# BI HEDÎSAN ÎSLAMIYET
**Hedîsên Serlewhe**


**Weşanên Serokatiya Karûbarên Diyanetê** : 1623
**Berhemên Çavkanî** : 210

**Lijneya Ilmî** : Prof. Dr. Mehmet GÖRMEZ
Prof. Dr. Mehmet Emin ÖZAFŞAR
Prof. Dr. İsmail Hakkı ÜNAL
Prof. Dr. Yavuz ÜNAL
Prof. Dr. Bünyamin ERUL

**Desteya Edîtoran** : Prof. Dr. Mehmet Emin ÖZAFŞAR
Prof. Dr. İsmail Hakkı ÜNAL
Prof. Dr. Yavuz ÜNAL
Prof. Dr. Bünyamin ERUL
Prof. Dr. Huriye MARTI
Dr. Mahmut DEMİR

**Werger** : Doç. Dr. Abdulhadi TİMURTAŞ

**Edîtorê Çapa Kurdi** : Prof. Dr. Abdurrahman CANDAN

**Desteya Redaksiyonê** : Prof. Dr. Huriye MARTI
Doç. Dr. Zişan TÜRCAN
Prof. Dr. Abdurrahman CANDAN
Dr. Mahmut DEMİR
Dr. Mahmut Esad ERKAYA
Dr. Mehmet HARMANCI
Dr. Muhammet Ali ASAR
Dr. Saliha TÜRCAN
Dr. Suat KOCA
Ali ÇİMEN
Elif ERDEM
Esma ÜRKMEZ
Hale ŞAHİN
Kenan ORAL
Rukiye AYDOĞDU DEMİR
Salih ŞENGEZER
Yıldıray KAPLAN
Yusuf TÜRKER

**Xwendina Dawî** : Prof. Dr. Mehmet Emin ÖZAFŞAR
Dr. Mahmut DEMİR
Elif ERDEM
Hale ŞAHİN
Kenan ORAL
Rukiye AYDOĞDU DEMİR
Salih ŞENGEZER
Yusuf TÜRKER

**Koordînatorê Giştî** : Prof. Dr. Huriye MARTI
**Serkarê Weşanê** : Dr. Fatih KURT
**Koordînasyon** : Lokman ARSLAN
**Grafîk û Rûpelsazî** : TAVOOS (+90 312. 439 01 69)
**Quntrola Çapê** : Mehmet Ali KIRCA
Uğur ALTUNTOP
**Amediya Bo Çapê** : Emre YILDIZ
**Çap û Cild** : Çağlayan A.Ş.
Sarnıç yolu No: 7 Gaziemir/İZMİR
(+90 232. 274 22 15)
**Çap** : Çapa 1, İzmir, Ekim 2019
**Qerara Lijneya Bilinda Karûbarên Diyanetê** : 12.07.2011/49
2019-35-Y-0003-1623
ISBN 978-605-7730-07-7
Numreya Sertîfîkayê: 12930







Dini Yayınlar Genel Müdürlüğü
Yabancı Dil ve Lehçelerde Yayınlar Daire Başkanlığı
Üniversiteler Mah. Dumlupınar Bulvarı
No: 147/A 06800 Çankaya/ANKARA
Tel: +90 312. 295 72 81
Faks: +90 312. 284 72 88
e-posta: diniyayinlar@diyanet.gov.tr

Dağıtım ve Satış
Döner Sermaye İşletme Müdürlüğü
Tel: 0 312 295 71 53 - 295 71 56
Faks: 0 312 285 18 54
e-posta: dosim@diyanet.gov.tr

# BI HEDÎSAN ÎSLAMIYET

## -HEDÎSÊN SERLEWHE-

**Bi Kurdî**
Doç. Dr. Abdulhadi TİMURTAŞ




SEROKATIYA KAR Û BARÊN DIYANETÊ



# NAVEROK

## BEŞA - IV
## ÎBADET

## BEŞA - VII
## TARÎX Û ŞAREDARÎ - I

## BEŞA - VIII
## HEYATA EBEDÎ, AXÎRET

# PÊŞGOTIN

Ilmê hedîsê, gotinên Hz. Muhemmed (s.) û sinneta wî ji heyam û zemanan wêdetir biriye. Misilman di her demî de gelek zêde pêve eleqadar bûne û ew kirine çavkaniya tesewwura heyîn û zanyarî û nirxên xwe. Di heman demê de, di derbareyê hedîsên ku bi wasîta wan Esrê Seadetê neqlê vê dema nû buyî de, gelek kulliyatên muezzem hatine wucûdê û lîteratoreka gelek fereh jî peyda bûye.

Bi rastî di derbareyê neqilkirina vê lîteratorê û çavkaniyên hedîsên kilasîk de bo pêşkêşkirina wan, bo ummetê xebatên curecur, hêja dewam dikin. Li Tirkiyê ji dewra avakirina komarê û pêde bi armanca gihandina peyamên Resûlê Xwedê (s.) û mînaktiya wî ya ser heyaman re bo îro, xebatên curecur hatine nivîsandin. Xeleka dawî ji zincîra van xebatan, xebata bi navê Bi Hedîsên Pêxember (s.) Îslamiyet ya ku ji teref Serokatiya Karên Dînî ve hatiye weşandine ye. Bêguman ev xebat li ser îhtiyaciya bi têgihiştina sinnet û hedîsên Pêxember (s.) bi şiklek rasterast hatiye hazirkirin. Heman demê de ev mîrasa giranbiha bi zimanek sade û zelal hatiye amadekirin û pirsgirêk û îhtiyaciyên zemanê nû hatine nirxandin û bi vî şiklî pêşkêşî xwendevanên îro bûye. Ji cîhet çerçove û esas û naverok û uslûba xwe ve bi nîsbet xebatên berê hatîn weşandin teybetiyên vê xebatê yên cuda hene û digel qîmetê xwe yê ilmî weke çavkaniyeka hedîsên bijare valehiyek muhîm jî didagire.

Di eslê xwe de ev xebat di heft cîldan de hatiye amadekirin û wek naverok ji muqeddîmeyek fereh, destpêk û heşt beşan pêk tê. Mijarên xebata bi navê Bi Hedîsan Îslamiyet –Hedîsên Serlewhe-, rastî û heqîqetên vê dema ku em tê de dijîn, digel zewqa wê ya edebî, hessasiyet û teybetmendiyên wê li ber çavan hatine girtin. Pêşiyê ayet û hedîsên di derheqê mijaran de ne hatine şîrovekirin. Hedîsên Pêxember (s.) li gor mijaran hatine tesnîfkirin. Belê şûna ku mîna kitêbên hedîsê yên kilasîk li pey hev werine rêzkirin, mijar bi rêz û tesewwurek diyar û bi danberçavkirina yekitiya nivîsê hatine tehlîlkirin. Piştî sernavê mijarê di hemî mijaran de çar an pênc hedîs cih digirin. Ev hedîsên ku wek Serlewhe hatine bi nav kirin, hem metnê wan yên Erebî û hem wergera wan ya Tirkî digel navê sehabiyê ku rîwayet kirî û çavkaniya ku jê hatî neqilkirin, hatine bicihkirin. Ev hedîsên serlewhe ji çavkaniyên muteber û ji rîwayetên sehîh yên ku fîkra mijarê ya esasî nîşandidin hatine bijartin. Bi qeder îmkan hedîsên serlewhe ji hedîsên kurt û hêsan yên ku jiberkirina wan rihet hatine bijartin û di mijaran de hatine bicihkirin.

Ev xebata di destê we de ye, di eslê xwe de ji hedîsên bin her mijara ku di kitêba bi navê *Bi Hedîsa Îslamiyet- Hedîsên Serlewhe-* de cih girtin pêk hatiye. Ev hedîsên li gor mijaran hatîn tesnîfkirin û yên ku ji 1601 hedîsan hatîn wucûdê kakila xebata Bi Hedîsa Îslamiyet- Hedîsên Serlewhe- ya ku heft cild e tê hesabê. Bi vî awayî ev hedîsên bijare ji kitêbên hedîsên muteber hatine girtin. Em hêvî dikin ku bi her yek ji van hedîsên ku di vê xebata ku bangî keşfkirina dinya Resûlê Xwedê (s.) ya ku tije rehmet û hîkmet e cih girtine, pencereyên nû di fikrên me û di rihê me û di menewiyata me de veke. Bi vê hêviyê em vê xebatê pêşkêşî Ummeta Îslamê û tevî însaniyetê dikin bo ku jê feyde û sûdê werbigirin.

Serokatiya Karên Dîyanetê

# ÎSTÎ‘AZE
## XWE SIPARTINA REBBÊ ALEMÊ

١- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَدْعُو يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الشِّقَاقِ وَالنِّفَاقِ وَسُوءِ الْأَخْلاَقِ."



٢- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: فَقَدْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لَيْلَةً مِنَ الْفِرَاشِ، فَالْتَمَسْتُهُ، فَوَقَعَتْ يَدِى عَلَى بَطْنِ قَدَمَيْهِ، وَهُوَ فِى الْمَسْجِدِ وَهُمَا مَنْصُوبَتَانِ وَهُوَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! أَعُوذُ بِرِضَاكَ مِنْ سَخَطِكَ، وَبِمُعَافَاتِكَ مِنْ عُقُوبَتِكَ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْكَ، لاَ أُحْصِى ثَنَاءً عَلَيْكَ، أَنْتَ كَمَا أَثْنَيْتَ عَلَى نَفْسِكَ."



٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْفَقْرِ وَالْقِلَّةِ وَالذِّلَّةِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ أَنْ أَظْلِمَ أَوْ أُظْلَمَ."



٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُعَوِّذُ الْحَسَنَ وَالْحُسَيْنَ، وَيَقُولُ: "إِنَّ أَبَاكُمَا كَانَ يُعَوِّذُ بِهَا إِسْمَاعِيلَ وَإِسْحَاقَ، أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللَّهِ التَّامَّةِ، مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ وَهَامَّةٍ، وَمِنْ كُلِّ عَيْنٍ لاَمَّةٍ."



# ÎSTÎ‘AZE
## XWE SIPARTINA REBBÊ ALEMÊ

**1.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: “Pêxemberê Xwedê (s.) wiha dia dikir: *‘Xwedayê min! Ez xwe dispêrim te ji derketina ji heqiyê, ji nîfaqê û ji exlaqê pîs.’*”

(D1546 Ebû Dawûd, Tefrî‘u ebwabi'l-wîtr, 32; N5473 Nesaî, Istîaze, 21)



**2.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: “Şevekê min Pêxemberê Xwedê (s.) di nav nivînan de nedît. Vêca ez lê geriyam destê min li binê piyên wî ketin û ew di secdeyê de bû, piyên wî jî rakirî bûn û wiha dia dikir: *‘Xwedayê min! Ez ji enra te xwe dispêrim rizaya te û ez ji cezakirina te xwe dispêrim efukirina te û ez ji te xwe dispêrim te. Ez çiqasî pesnê te bidim cardî jî têrê nake, Te pesnê xwe çawa dabe tu wisayî.’*”

(M1090 Muslim, Salat, 222)



**3.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Pêyxember (s.) wiha dia dikir: *“Xwedayê min! Ez ji feqîriyê, ji tunehiyê û ji zilletê xwe dispêrime te, ez ji te‘darîkirinê û ji hatin te‘darîkirinê jî xwe dispêrime te.”*

(D1544 Ebû Dawûd, Tefrî‘u ebwabi'l-wîtr, 32)



**4.** Ji İbn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo parastina Hesen û Huseyn wiha digot: *“Ez ji (şerrê) her şeytanî û ji heşeratan û ji her çavê nezerker xwe dispêrime peyvên Xweda yên bêkêmasî (îrade û hukmê wî)”* û digot: *“Bavê we jî, ji bo parastina İsmaîl û İshaq ev dia dixwend.”*

(B3371 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 10)



٥- عَنْ شُتَيْرِ بْنِ شَكَلٍ عَنْ أَبِيهِ شَكَلِ بْنِ حُمَيْدٍ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ عَلِّمْنِى تَعَوُّذًا أَتَعَوَّذُ بِهِ. قَالَ: فَأَخَذَ بِكَتِفِى فَقَالَ "قُلِ اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ سَمْعِى وَمِنْ شَرِّ بَصَرِى وَمِنْ شَرِّ لِسَانِى وَمِنْ شَرِّ قَلْبِى وَمِنْ شَرِّ مَنِيِّى."



٦- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ لاَ أُعَلِّمُكُمْ إِلاَّ مَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعَلِّمُنَا يَقُولُ "اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْعَجْزِ وَالْكَسَلِ وَالْبُخْلِ وَالْجُبْنِ وَالْهَرَمِ وَعَذَابِ الْقَبْرِ اللَّهُمَّ آتِ نَفْسِى تَقْوَاهَا وَزَكِّهَا أَنْتَ خَيْرُ مَنْ زَكَّاهَا أَنْتَ وَلِيُّهَا وَمَوْلاَهَا اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ قَلْبٍ لاَ يَخْشَعُ وَمِنْ نَفْسٍ لاَ تَشْبَعُ وَعِلْمٍ لاَ يَنْفَعُ وَدَعْوَةٍ لاَ يُسْتَجَابُ لَهَا."

# BESMELE
## MIFTA DERIYÊ HEMÎ XÊRA YE

٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُّ كَلَامٍ أَوْ أَمْرٍ ذِي بَالٍ لَا يُفْتَحُ بِذِكْرِ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ فَهُوَ أَبْتَرُ، أَوْ قَالَ أَقْطَعُ."



٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ طَعَامًا فَلْيَقُلْ بِسْمِ اللَّهِ، فَإِنْ نَسِيَ فِى أَوَّلِهِ فَلْيَقُلْ بِسْمِ اللَّهِ فِى أَوَّلِهِ وَآخِرِهِ."



**5.** Şuteyr bin Şekel (r.) ji bavê xwe Şekel bin Humeyd (r.) ragihandiye ku wiha gotiye: "Ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.) min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Min bielimîne duayeke ku ez pê xwe bisipêrim.' Li ser vê yekê Pêxember (s.) bi namilê min girt û got: *'Bêje: Ey Xwedayê min! Ez ji şerrê guhên xwe, ji şerrê çavên xwe, ji şerrê zimanê xwe, ji şerrê dilê xwe û ji şerrê şehweta xwe, xwe dispêrime te.'*"

(T3492 Tirmîzî, De'ewat, 74)



**6.** Zeyd bin Erqem (r.) wiha gotiye: "Ez tenê we hînê tişta ku Resûlê Xwedê (s.) em hînê dikirin hîn dikim. Resûlê Xwedê digot: *'Ey Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te ji bêtaqetiyê, ji tiraliyê, ji kunûjiyê, ji newêrektiyê, ji kalbûnê, ji ezabê qebrê. Ey Xwedayê min! Teqwayê (têgihaştina mesuliyetê) bixe nesibê nefsa min, tu wê paqij bike, tu çêtirînî paqijkeran î, dost û xwedanê wê tu yî, Ey Xwedayê min! Ez ji dilê natirsê, ji nefsa têrnabe, ji ilmê bê mifa û ji diaya nayê qebulkirin xwe dispêrime te.'*"

(N5460 Nesaî, Îstî'aze, 13; M6906 Muslim, Zikir we dua we tewbe we Îstîxfar, 73)

# BESMELE
## MIFTA DERIYÊ HEMÎ XÊRA YE

**7.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Pêyxember (s.) wiha gotiye: *"Çi gotin an jî karê girîng yê ku bi navê Xwedê newê destpêkirin ew qutbuyiye/bêberekt e."*

(HM8697 Ibn Hanbel, II, 360)



**8.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Pêyxember (s.) wiha gotiye: *"Dema yek ji we xarinê bixwe, bila bêje: 'Bismillah' (Bi navê Xwedê). Heke di serî de jibîrkir bêje, bila wiha bêje: 'Bismillah fî ewwelih we axirih' (Di serî de jî û di dawîde jî bi navê Xwedê)*

(T1858 Tirmizî, Et'ime, 47)



٩- عَنْ جابِرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "أَغْلِقْ بَابَكَ وَاذْكُرِ اسْمَ اللَّهِ فَإِنَّ الشَّيْطَانَ لاَ يَفْتَحُ بَابًا مُغْلَقًا، وَأَطْفِ مِصْبَاحَكَ وَاذْكُرِ اسْمَ اللَّهِ، وَخَمِّرْ إِنَاءَكَ وَلَوْ بِعُودٍ تَعْرُضُهُ عَلَيْهِ وَاذْكُرِ اسْمَ اللَّهِ، وَأَوْكِ سِقَاءَكَ وَاذْكُرِ اسْمَ اللَّهِ."



١٠- عَنِ الْبَرَاءِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا أَخَذَ مَضْجَعَهُ قَالَ "اللَّهُمَّ بِاسْمِكَ أَحْيَا وَبِاسْمِكَ أَمُوتُ." وَإِذَا اسْتَيْقَظَ قَالَ "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى أَحْيَانَا بَعْدَ مَا أَمَاتَنَا وَإِلَيْهِ النُّشُورُ."



١١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا أُدْخِلَ الْمَيِّتُ الْقَبْرَ، قَالَ: "بِسْمِ اللَّهِ. وَعَلَى مِلَّةِ رَسُولِ اللَّهِ."

# HEMDELE
## HER CURE PESNEDARÎ XASSÊ REBBÊ ALEMÊ YE

١٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُّ أَمْرٍ ذِى بَالٍ، لاَ يُبْدَأُ فِيهِ بِالْحَمْدِ، أَقْطَعُ."



**9.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Pêyxember (s.) wiha gotiye: *"Navê Xwedê bîne û deriyê xwe dade, bêguman şeytan deriyê dadayî naveke û navê Xwedê bîne û çiraya xwe bitefêne û navê Xwedê bîne û bi darikeke jî be firaxa xwe biniximîne û navê Xwedê bîne û firaxa ava xwe jî biniximîne."*

(D3731 Ebû Dawûd, Eşrîbe, 22)



**10.** Ji Berra' (r.) hatiye ragihandin ku dema Pêxwember (s.) (ji bona raze) xwe dirêjdikir wiha digot: *"Ey Xwedayê min! Ez bi navê te dijîm û bi navê te dimirim"* û dema ji xew dirabû wiha digot: *"Hemd ji wî Xwedayî re be ku piştî em mirandin jiyan da me û vejandina ji qebrê tenê bal wî ve ye"*

(M6887 Muslim, Zikir we dua we tewbe we Îstîxfar, 59)



**11.** Ji İbn Umer (r.) hatiye ragihandin ku gotiye: Dema mirî têxistine qebrê de Pêxember (s.) digot: *"Bi navê Xwedê û li ser dînê Resûlê Xwedê (em te têxine qebrê de)*

(ÎM1550 Ibn Maceh, Cena'îz, 38)

# HEMDELE
## HER CURE PESNEDARÎ XASSÊ REBBÊ ALEMÊ YE

**12.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Pêyxember (s.) wiha gotiye: *"Çi karê girîng yê ku bi hemdê Xwedê newê destpêkirin ew kêm e/bêberekt e."*

(ÎM1894 Ibn Maceh, Nîkah, 19)



١٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ، إِذَا رَأَى مَا يُحِبُّ قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى بِنِعْمَتِهِ تَتِمُّ الصَّالِحَاتُ." وَإِذَا رَأَى مَا يَكْرَهُ قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ عَلَى كُلِّ حَالٍ."



١٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَا أَنْعَمَ اللَّهُ عَلَى عَبْدٍ نِعْمَةً فَقَالَ: الْحَمْدُ لِلَّهِ، إِلاَّ كَانَ الَّذِى أَعْطَاهُ أَفْضَلَ مِمَّا أَخَذَ."



١٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "إِنَّ اللَّهَ لَيَرْضَى عَنِ الْعَبْدِ أَنْ يَأْكُلَ الْأَكْلَةَ فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا، أَوْ يَشْرَبَ الشَّرْبَةَ فَيَحْمَدَهُ عَلَيْهَا."



١٦- عَنْ أَبِى مَالِكٍ الْأَشْعَرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "الطُّهُورُ شَطْرُ الإِيمَانِ، وَالْحَمْدُ لِلَّهِ تَمْلأُ الْمِيزَانَ وَسُبْحَانَ اللَّهِ وَالْحَمْدُ لِلَّهِ تَمْلآنِ -أَوْ تَمْلأُ- مَا بَيْنَ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضِ..."

**13.** Hz. Aîşe (r.) wiha gotiye: "Dema Pêxemberê Xwedê tiştek a jê hez dikir bidîta wiha digot: *'Hemd ji wi Xwedayê ku tiştên feydedar bi nimetên wî temam dibin re be'* û dema tiştek ku jê hez nekirî bidîta wiha digot: *'Di her hal û rewşê de hemd ji Xwedê re be'.*"

(İM3803 Ibn Maceh, Edeb, 55)



**14.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: *"(Heke) Xwedê nimetek dabe ebdê xwe û ewî jî li ser vê yekê gotibe 'Elhemdu lillah' û pesnê wî kiribe, bê guman ev gotin li bal Xwedê ji wê nimetê bi qîmettir e."*

(İM3805 Ibn Maceh, Edeb, 55)



**15.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Xweda ji wî ebdê ku tiştek e dixwe û hemdê wî dike an jî tiştek e divexwe û hemdê wî dike razî dibe."*

(M6932 Muslim, Zikir we dua we tewbe we Îstîxfar, 89)



**16.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Paqijî nîvê îmanê ye, û 'elhemdu lillah' şihîna emelan tije dike û 'Subhanellah we'l-hemdu lillah' navbera erd û asîmanan tije dike."*

(M534 Muslim, Teharet, 1)

# SELWELE
## SELAT Û SELAMA LI SER RESÛLÊ PAYEBILIND

١٧- حَدَّثَنَا الْحَكَمُ قَالَ: سَمِعْتُ عَبْد الرَّحْمَنِ بْن أَبِي لَيْلَى قَالَ: لَقِيَنِى كَعْبُ بْنُ عُجْرَةَ فَقَالَ: أَلاَ أُهْدِى لَكَ هَدِيَّةً؟ إِنَّ النَّبِيَّ ﷺ خَرَجَ عَلَيْنَا فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ قَدْ عَلِمْنَا كَيْفَ نُسَلِّمُ عَلَيْكَ، فَكَيْفَ نُصَلِّى عَلَيْكَ؟ قَالَ: "قُولُوا اللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ. اللَّهُمَّ بَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ، وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ، كَمَا بَارَكْتَ عَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ."



١٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَوْلَى النَّاسِ بِى يَوْمَ الْقِيَامَةِ أَكْثَرُهُمْ عَلَىَّ صَلاَةً."



١٩- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْبَخِيلُ الَّذِى مَنْ ذُكِرْتُ عِنْدَهُ فَلَمْ يُصَلِّ عَلَيَّ."



# SELWELE
## SELAT Û SELAMA LI SER RESÛLÊ PAYEBILIND

**17.** Hekem (r.) ji me re got: "Min ji Ebdurrehman bin Ebî Leyla bihîst digot: Ke'b bin 'Ucre liqayî min hat û got: 'Ma ez tiştekî diyariyê te bikim?' (û dewam kir got:) 'Rojekê Resûlê Xwedê (s.) hate cem me, me got: 'Ya Resûlê Xwedê! Em zanin emê çawa silemê bidine te (ka ji mere bêje) emê çawa selawatan li ser te bidin?' Resûlê Xwedê wiha bersif da: *'Bêjin: Ya Rebbî! Te çawa rehmet li malbata Îbrahîm kiriye wisa rehmê li Muhemmed û li malabata Muhemmed jî bike, bê guman tu layîqê hemdê yî û payebilind î. Ya Rebbî! Te çawa bereket daye malbata Îbrahîm tu wisa bereketê bide Muhemmed û bide malbata Muhemmed, bê guman tu layîqê hemdê yî û payebilind î."*

(B6357 Buxarî, De'ewat, 32; M908 Muslim, Salat, 66)



**18.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiğe: "Kê bêhtir li ser min selewat xwendibe, Roja Qiyametê dê ew ji herkesi bêhtir nezîkî min be."

(T484 Tirmizî, Witr, 21)



**19.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xweda (s.) wiha gotiye: *"Kunûj ew kesê ku behsa min li cem wî hatibe kirin û selewat li ser min neanî be ye."*

(T3546 Tirmizî, De'ewat, 100)



٢٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَجْعَلُوا بُيُوتَكُمْ قُبُورًا وَلاَ تَجْعَلُوا قَبْرِى عِيدًا وَصَلُّوا عَلَيَّ فَإِنَّ صَلاَتَكُمْ تَبْلُغُنِى حَيْثُ كُنْتُمْ."



٢١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ صَلَّى عَلَيَّ وَاحِدَةً صَلَّى اللَّهُ عَلَيْهِ عَشْرًا."

**20.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Xaniyên xwe veneguhezînin qebrîstanê û qebra min jî nekin warê cejnê. Selewata li ser min bidin, bê guman hûn li kû derê bin jî selewatên we digihine min."*

(D2042 Ebû Dawûd, Menasik, 96, 97)



**21.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî carekê selewatekê li ser min bixwêne, wê Xwedê deh cara selewatan li ser wî bide (rehmê lê bike)."*

(M912 Muslim, Salat, 70)

# BEŞA - I



# ELLAH, ALEM, ÎNSAN Û DÎN

٢٢- عَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ أَنَّ الْمُشْرِكِينَ قَالُوا لِلنَّبِيِّ ﷺ : يَا مُحَمَّدُ انْسُبْ لَنَا رَبَّكَ. فَأَنْزَلَ اللَّهُ تَبَارَكَ وَتَعَالَى "قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ اللَّهُ الصَّمَدُ لَمْ يَلِدْ وَلَمْ يُولَدْ وَلَمْ يَكُنْ لَهُ كُفُوًا أَحَدٌ."



٢٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ... أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ إِذَا أَخَذَ مَضْجَعَهُ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى كَفَانِى وَآوَانِى وَأَطْعَمَنِى وَسَقَانِى وَالَّذِى مَنَّ عَلَيَّ فَأَفْضَلَ وَالَّذِى أَعْطَانِى فَأَجْزَلَ. الْحَمْدُ لِلَّهِ عَلَى كُلِّ حَالٍ. اللَّهُمَّ! رَبَّ كُلِّ شَيْءٍ وَمَلِيكَهُ وإِلَهَ كُلِّ شَيْءٍ أَعُوذُ بِكَ مِنَ النَّارِ."



٢٤- عَنْ أَبِى مُوسَى قَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِى سَفَرٍ فَكُنَّا إِذَا عَلَوْنَا كَبَّرْنَا فَقَالَ: "ارْبَعُوا عَلَى أَنْفُسِكُمْ فَإِنَّكُمْ لاَ تَدْعُونَ أَصَمَّ وَلاَ غَائِبًا، تَدْعُونَ سَمِيعًا بَصِيرًا قَرِيبًا."



**22.** Ji Ubeyy bin Ke'b (r.) hatiye ragihandin ku Muşrikan ji Pêxember (s.) re gotin: “Ey Muhemmed! Neseba rebbê xwe ji me re bêje (ka çi kes e ji kê ye?)” Li ser vê yekê Xwedê Tebareke we Teala Sûretê Ixlas nazil kir: *“Bêje ew Ellah yek e, Ellah ne muhtacê tu kesî an tu tişti ye, belê her kes û her tişt muhtacê wî ye, kes ji wî ne buye û ew ji kesekî nebuye, tu kesê hemkufê (mîna) wî nîne.”*

(HM21538 Ibn Hanbel, V, 133)



**23.** Ji İbn Umer (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) xwe li ser doşeka xwe dirêj dikir wiha digot: *“Hemd ji wî Xwedayê ku ihtiyaciyên min pêkanîne, ez hewandime, ez têrxwarin û têrvexarin kirime re be. (Hemd) ji wî Xwedayî re be ku qencî li min kir û zêde kir, nimetê xwe dane min û zehf da. Di her rewş û di her halî de hemd ji Xwedê re be. Ey Xwedayê min! Rebbê her tiştî, hakim û îlahê wan! Ez ji Cehennemê xwe dispêrime te.”*

(D5058 Ebû Dawûd, Edeb, 97, 98)



**24.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Em di seferekê de bi Pêxember (s.) re bûn, çi dema em jûrê girekî dibûn me (bidengekî bilind) tekbîr tanî. Vêca li ser vê yekê Pêxember (s.) got: *‘Zehmetiyê nedine xwe (hêdî hêdî) hûn gaziyê kesekî kerr an jî ne hazir nakin, hûn gaziyî yekî ku her tiştî dibihîze, dibîne û nêzîk e dikin.’*”

(B7386 Buxarî, Tewhîd, 9)



٢٥- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ [الأَنْصَارِىِّ] قَالَ: كُنْتُ أَضْرِبُ مَمْلُوكًا لِى فَسَمِعْتُ قَائِلاً مِنْ خَلْفِى يَقُولُ: اعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ اعْلَمْ أَبَا مَسْعُودٍ فَالْتَفَتُّ فَإِذَا أَنَا بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "لَلَّهُ أَقْدَرُ عَلَيْكَ مِنْكَ عَلَيْهِ."



٢٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَأْمُرُنَا إِذَا أَخَذَ أَحَدُنَا مَضْجَعَهُ أَنْ يَقُولَ: "اللَّهُمَّ رَبَّ السَّمَوَاتِ وَرَبَّ الْأَرَضِينَ وَرَبَّنَا وَرَبَّ كُلِّ شَيْءٍ فَالِقَ الْحَبِّ وَالنَّوَى وَمُنْزِلَ التَّوْرَاةِ وَالْإِنْجِيلِ وَالْقُرْآنِ أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ كُلِّ ذِى شَرٍّ أَنْتَ آخِذٌ بِنَاصِيَتِهِ أَنْتَ الْأَوَّلُ فَلَيْسَ قَبْلَكَ شَيْءٌ وَأَنْتَ الْآخِرُ فَلَيْسَ بَعْدَكَ شَيْءٌ وَالظَّاهِرُ فَلَيْسَ فَوْقَكَ شَيْءٌ وَالْبَاطِنُ فَلَيْسَ دُونَكَ شَيْءٌ."

# NAV Û SIFETÊN XWEDÊ
## NAVÊN HERÎ DELAL YÊ WÎ NE

٢٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "يَقُولُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِى بِى وَأَنَا مَعَهُ حِينَ يَذْكُرُنِى، إِنْ ذَكَرَنِى فِى نَفْسِهِ ذَكَرْتُهُ فِى نَفْسِى، وَإِنْ ذَكَرَنِى فِى مَلَإٍ ذَكَرْتُهُ فِى مَلَإٍ هُمْ خَيْرٌ مِنْهُمْ، وَإِنْ تَقَرَّبَ مِنِّى شِبْرًا تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ ذِرَاعًا، وَإِنْ تَقَرَّبَ إِلَيَّ ذِرَاعًا تَقَرَّبْتُ مِنْهُ بَاعًا، وَإِنْ أَتَانِى يَمْشِى أَتَيْتُهُ هَرْوَلَةً."



**25.** Ji Ebû Mesûd (el-Ensarî) (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Rejekê min li koleyeke xwe dida, min dît wê hînê re yekî li paş min digot: 'Bizane ey Ebû Mesûd! Bizane ey Ebû Mesûd!' Min berê xwe dayê û min dît ku waye Resûlê Xwedê (s.) ye û got: '*Hêz û qeweta Xwedê pêşberê te de ji hêz û qeweta te pêşberê koleyê te gelek zehftir e.*'"

(T1948 Tirmîzî, Birr we sile, 30)



**26.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) emrê me dikir ku dema em xwe ser doşeka xwe re dirêj bikin, vê duayê bixwênin: *"Ey Xwedayê min, Rebbê asîmana, Rebbê erdê Rebbê me, Rebbê her tiştî, ewê tov û sîsik şeqitandî, ewê Tewrat û İncîl û Qur'an nazilkirîn! Ez xwe dispêrime te ji şerrê her tişta zererdar a ku bin hukmê te de ye. Tu el-Evvel î tiştek pêşiya te tuneye, tu el-Axirî tu tişt pey te re tuneye, Tu ez-Zahir î, (delîlê heyîna te eşkere ne) tu tişt ser te re tuneye, tu el-Batin î, (hewqas xef î heqîqeta zatê te ji teref mirovan ve nayête idrak kirin) ji te xeftir tiştek tune ye."*

(T3400 Tirmizî, De'ewat, 19; M6889 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 61)

# NAV Û SIFETÊN XWEDÊ
## NAVÊN HERÎ DELAL YÊ WÎ NE

**27.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: "Xwedê Ezze we Celle dibêje: '*Ebdê min çi hêviyê j imin bike ez weke hêviya wî me (ezê hêviya wî pêkbînim) dema ew min bîr tîne ez bi wî re me, heke ew di nefsa xwe de min bîr bîne ezê jî wî di nefsa xwe de bîr bînim, heke ew di nav komeke de min bîr bîne ezê wî di nav komeke qenctir de wî bîr bînim, heke ew bostekî nêzîkê min bibe, ezê gezekî nêzîkê wî bibim, heke ew gezekî nêzîkê min bibe ezê qulaçekî nêzîkê wî bibim, heke ew bi meş were ba min ezê bibez herim ba wî.*'"

(M6805 Muslim, Zikir we dua we tewbe ve îstîxfar, 2)



٢٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولِ اللَّه ﷺ قَالَ: "إِنَّ لِلَّهِ تِسْعَةً وَتِسْعِينَ اسْمًا، مِائَةً إِلا وَاحِدًا، مَنْ أَحْصَاهَا دَخَلَ الْجَنَّةَ."



٢٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ... "إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ..."



٣٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلَّهِ تَعَالَى تِسْعَةً وَتِسْعِينَ اسْمًا مِائَةً غَيْرَ وَاحِدَةٍ مَنْ أَحْصَاهَا دَخَلَ الْجَنَّةَ. هُوَ اللَّهُ الَّذِى لاَ إِلَهَ إِلاَّ هُوَ الرَّحْمَنُ الرَّحِيمُ الْمَلِكُ الْقُدُّوسُ السَّلاَمُ الْمُؤْمِنُ الْمُهَيْمِنُ الْعَزِيزُ الْجَبَّارُ الْمُتَكَبِّرُ الْخَالِقُ الْبَارِئُ الْمُصَوِّرُ الْغَفَّارُ الْقَهَّارُ الْوَهَّابُ الرَّزَّاقُ الْفَتَّاحُ الْعَلِيمُ الْقَابِضُ الْبَاسِطُ الْخَافِضُ الرَّافِعُ الْمُعِزُّ الْمُذِلُّ السَّمِيعُ الْبَصِيرُ الْحَكَمُ الْعَدْلُ اللَّطِيفُ الْخَبِيرُ الْحَلِيمُ الْعَظِيمُ الْغَفُورُ الشَّكُورُ الْعَلِيُّ الْكَبِيرُ الْحَفِيظُ الْمُقِيتُ الْحَسِيبُ الْجَلِيلُ الْكَرِيمُ الرَّقِيبُ الْمُجِيبُ الْوَاسِعُ الْحَكِيمُ الْوَدُودُ الْمَجِيدُ الْبَاعِثُ الشَّهِيدُ الْحَقُّ الْوَكِيلُ الْقَوِيُّ الْمَتِينُ الْوَلِيُّ الْحَمِيدُ الْمُحْصِى الْمُبْدِئُ الْمُعِيدُ الْمُحْيِى الْمُمِيتُ الْحَيُّ الْقَيُّومُ الْوَاجِدُ الْمَاجِدُ الْوَاحِدُ الصَّمَدُ الْقَادِرُ الْمُقْتَدِرُ الْمُقَدِّمُ الْمُؤَخِّرُ الأَوَّلُ الآخِرُ الظَّاهِرُ الْبَاطِنُ الْوَالِى الْمُتَعَالِى الْبَرُّ التَّوَّابُ الْمُنْتَقِمُ الْعَفُوُّ الرَّءُوفُ مَالِكُ الْمُلْكِ ذُو الْجَلاَلِ وَالإِكْرَامِ الْمُقْسِطُ الْجَامِعُ الْغَنِيُّ الْمُغْنِى الْمَانِعُ الضَّارُّ النَّافِعُ النُّورُ الْهَادِى الْبَدِيعُ الْبَاقِى الْوَارِثُ الرَّشِيدُ الصَّبُورُ."

**28.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Ji seda yek kêm nehwêt û neh navên Xweda hene, kesê wan (hîn bibe û li gorî wan emel bike) bi hijmêre wê kevê Cennetê de."*

(B2736 Buxarî, Şurût, 18)



**29.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê xweşik e hez ji xweşiktayiyê dike."*

(M265 Muslim, Îman, 147)



**30.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Ji seda yek kêm nehwêt û neh navên Xweda hene, kesê wan (hîn bibe û li gorî wan emel bike) bi hijmêre wê kevê Cennetê de. Ew jî evin: *Ellah e ewê ku ji bilî wî tu îlah tunehin, er-Rehman, er-Rehîm, el-Melik, el-Quddûs, es-Selam, el-Mu'min, el-Muheymin, el-Ezîz, el-Cebbar, el-Mutekebbir, el-Xaliq, el-Barî, el-Musawwir, el-Xeffâr, el-Qehhar, el-Wehhab, er-Rezzâq, el-Fettah, el-'Elîm, el-Qâbid, el-Basit, el-Xafid, er-Rafi', el-Mu'izz, el-Muzill, es-Semî', el-Besîr, el-Hekem, el-'Edl, el-Letîf, el-Xebîr, el-Helîm, el-'Ezîm, el-Xefûr, eş-Şekûr, el-'Elîyy, el-Kebîr, el-Hefîz, el-Muqît, el-Hesîb, el-Celîl, el-Kerîm, er-Reqîb, el-Mucîb, el-Wasi', el-Hekîm, el-Wedûd, el-Mecîd, el-Ba'is, eş-Şehîd, el-Heq, el-Wekîl, el-Qevî, el-Metîn, el-Welî, el-Hemîd, el-Muhsî, el-Mubdî', el-Mu'îd, el-Muhyî, el-Mumît, el-Heyy, el-Qeyyûm, el-Wacid, el-Macid, el-Wahid, es-Samed, el-Qadir, el-Muqtedir, el-Muqeddim, el-Muaxxir, el-Ewwel, el-Axir, ez-Zahir, el-Batin, el-Walî, el-Mute'alî, el-Berr, et-Tewwab, el-Munteqîm, el-'Efuw, er-Reûf, Maliku'l-mulk, Zu'l-Celali we'l-Îkram, el-Muqsit, el-Cami', el-Xenî, el-Muxnî, el-Mani', ed-Darr, en-Nâfi', en-Nûr, el-Hadî, el-Bedî', el-Baqî, el-Waris, er-Reşîd, es-Sebûr."*

(T3507 Tirmizî, De'ewat, 82)

# AFIRANDIN
## HEYÎNA JI NEYÎNÊ

٣١- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ ﵁ قَالَ: دَخَلْتُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ ...قَالَ "كَانَ اللَّهُ وَلَمْ يَكُنْ شَيْءٌ غَيْرُهُ..."



٣٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ... قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مِمَّ خُلِقَ الْخَلْقُ؟ قَالَ: "مِنَ الْمَاءِ."



٣٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خُلِقَتِ الْمَلائِكَةُ مِنْ نُورٍ وَخُلِقَ الْجَانُّ مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ وَخُلِقَ آدَمُ مِمَّا وُصِفَ لَكُمْ."



٣٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُّ مَوْلُودٍ يُولَدُ عَلَى الْفِطْرَةِ، فَأَبَوَاهُ يُهَوِّدَانِهِ أَوْ يُنَصِّرَانِهِ أَوْ يُمَجِّسَانِهِ..."



٣٥- حَدَّثَنَا أَبُو مُوسَى الْأَشْعَرِيُّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ خَلَقَ آدَمَ مِنْ قَبْضَةٍ قَبَضَهَا مِنْ جَمِيعِ الْأَرْضِ فَجَاءَ بَنُو آدَمَ عَلَى قَدْرِ الْأَرْضِ جَاءَ مِنْهُمُ الْأَحْمَرُ وَالْأَبْيَضُ وَالْأَسْوَدُ وَبَيْنَ ذَلِكَ وَالسَّهْلُ وَالْحَزْنُ وَالْخَبِيثُ وَالطَّيِّبُ."

# AFIRANDIN
## HEYÎNA JI NEYÎNÊ

**31.** Ji ‘Imran bin Husayn (Xwedê ji herduyan razîbe) hatiye ragihandin gotiye: “Ez çûme cem Pêxmber (s.) (Li ser pirsekî got:) *‘Xwedê hebû û ji bilî wî tiştek dîtir tunebû...’*”

(B3191 Buxarî, Bed’u'l-xelq, 1)



**32.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Min got: ‘Ya Resûlê Xwedê! Ma mexlûqat ji çi çêbûne?’ Ewî got: *“ji avê.”*”.

(T2526 Tirmîzî, Sıfatu'l-cenne, 2)



**33.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: *“Melaîket ji nûrê hatine afirandin, cin ji guriya agir hatine afirandin û Adem ji wê tişta ku (di Qur’anê de) ji we re hatî şîrovekirin (ji axê) hatiye afirandin.”*

(M7495 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 60)



**34.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Her zarok li ser fitret tête dinyayê, vêca dê û bavê wî ewî an dikine cihû an fileh an jî Mecûsî.”*

(B1385 Buxarî, Cena'iz, 92)



**35.** Ji Ebû Mûsa el-Eş‘arî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Xwedê Adem ji komek axa ku ji her derê erdê kom kirî afirandiye. Bo vê yekê zarokên Adem jî weke (cureyên axa) erdê (ji cihet reng û tebîet ve cuda cuda) çêbûne. Hinek ji wan sor, hinek sipî, hinek reş û hinek navbera wan de (melez), hinek nerm, hinek hişk, hinek xirab û hinek jî qenc çêbûne.”*

(D4693 Ebû Dawûd, Sunnet, 16)

# MELAÎKET
## HEYÎNÊN JI NÛRÊ

٣٦- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خُلِقَتِ الْمَلاَئِكَةُ مِنْ نُورٍ، وَخُلِقَ الْجَانُّ مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ، وَخُلِقَ آدَمُ مِمَّا وُصِفَ لَكُم."

٣٧- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنِّى أَرَى مَا لاَ تَرَوْنَ وَأَسْمَعُ مَا لاَ تَسْمَعُونَ. إِنَّ السَّمَاءَ أَطَّتْ وَحُقَّ لَهَا أَنْ تَئِطَّ. مَا فِيهَا مَوْضِعُ أَرْبَعِ أَصَابِعَ إِلاَّ وَمَلَكٌ وَاضِعٌ جَبْهَتَهُ سَاجِدًا لِلَّهِ..."

٣٨- قَالَ عَبْدُ اللَّهِ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلَّهِ مَلاَئِكَةً فِي الْأَرْضِ سَيَّاحِينَ، يُبَلِّغُونِي مِنْ أُمَّتِي السَّلاَمَ."

٣٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَتَعَاقَبُونَ فِيكُمْ مَلاَئِكَةٌ بِاللَّيْلِ وَمَلاَئِكَةٌ بِالنَّهَارِ، وَيَجْتَمِعُونَ فِى صَلاَةِ الْعَصْرِ وَصَلاَةِ الْفَجْرِ، ثُمَّ يَعْرُجُ الَّذِينَ بَاتُوا فِيكُمْ فَيَسْأَلُهُمْ، وَهُوَ أَعْلَمُ بِهِم، فَيَقُولُ: كَيْفَ تَرَكْتُمْ عِبَادِى؟ فَيَقُولُونَ: تَرَكْنَاهُمْ وَهُمْ يُصَلُّونَ، وَأَتَيْنَاهُمْ وَهُمْ يُصَلُّونَ."

# MELAÎKET
## HEYÎNÊN JI NÛRÊ

**36.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: *"Melaîket ji nûrê hatine afirandin, cin ji guriya agir hatine afirandin û Adem ji wê tişta ku (di Qur'anê de) ji web re hatî şîrovekirin (ji axê) hatiye afirandin."*

(M7495 Muslim, Zuhd we reqa'îq, 60)



**37.** Ji Ebû Zerr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: *"Ez tiştê hûn nabînin dibînim û tiştê hûn nabihîzin dibihîzim. Bê guman asîman hejiha û heqe biheje, lewra di asîmanan de di her miqdarê çar tiliya valeyîyeke ku melaîketekî eniya xwe nedanîbe ser û ji Xwedê re secde ne kiribe nîne."*

(ÎM4190 Ibn Maceh, Zuhd, 19)



**38.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li ser rûyê erdê melaîketinên Xwedê yê digerihin hene, selamê ummeta min digihînine min."*

(HM3666 Ibn Hanbel, I, 387)



**39.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: *"Hinek Melaîket bi roj û hinek jî bi şev bi nobet di nav we de ne, di dema nimêja esrê û nimêja sibihê de li hev dicivin, piştre ew melaîketên ku bi we re şev derbaskirîn hildikêşin asîmana, vêca digel ku Xwedê çêtir dizanit jî ji wan dipirse û dibêje: Ma we ebdên min çawa hiştin? Ew dibêjin: Em ji wan veqetiyan nimêj dikirin û em çûne ba wan nimêj dikirin."*

(B7429 Buxarî, Tewhîd, 23)

# CIN
## EBDÊN XWEDÊ YÊN NAYINE DÎTIN

٤٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! لَكَ أَسْلَمْتُ، وَبِكَ آمَنْتُ، وَعَلَيْكَ تَوَكَّلْتُ، وَإِلَيْكَ أَنبْتُ، وَبِكَ خَاصَمْتُ، اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِعِزَّتِكَ لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ أَنْ تُضِلَّنِى، أَنْتَ الْحَيُّ الَّذِى لاَ يَمُوتُ، وَالْجِنُّ وَالإِنْسُ يَمُوتونَ."



٤١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنَّ الْكُهَّانَ كَانُوا يُحَدِّثُونَنَا بِالشَّيْءِ فَنَجِدُهُ حَقًّا، قَالَ: "تِلْكَ الْكَلِمَةُ الْحَقُّ، يَخْطَفُهَا الْجِنِّيُّ فَيَقْذِفُهَا فِى أُذُنِ وَلِيِّهِ، وَيَزِيدُ فِيهَا مِائَةَ كَذْبَةٍ."



٤٢- عَنْ عَائِشَةَ، انَّهَا كَانَتْ تُؤْتَى بِالصِّبْيَانِ إِذَا وُلِدُوا، فَتَدْعُو لَهُمْ بِالْبَرَكَةِ. فَأُتِيَتْ بِصَبِيٍّ، فَذَهَبَتْ تَضَعُ وِسَادَتَهُ، فَإِذَا تَحْتَ رَأْسِهِ مُوسَى فَسَالَتْهُمْ عَنِ الْمُوسَى ؟ فقَالُوا: نَجْعَلُهَا مِنَ الْجِنِّ. فَاخَذَتِ الْمُوسى فرَمَتْ بِهَا، وَنَهَتْهُمْ عَنْهَا وَقالَتْ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَكْرَهُ الطِّيَرَةَ وَيُبْغِضُهَا. وَكَانَتْ عَائِشَةُ تَنْهَى عَنْهَا.



# CIN
## EBDÊN XWEDÊ YÊN NAYINE DÎTIN

**40.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) digot: *"Ya Rebbî! Ez teslîmê te bûm, min bawerî bi te anî, min tewekkula xwe bi te kir, min berê xwe da te û bi alîkariya te min mucadele kir. Ey Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te ku tu min nekê şaşîtiyê de, lewra ji bilî te tu xweda tunehin, tu ew saxê ku tucara namire yî, lêbelê cin û însan (tev) dimirin."*

(M6899 Muslim, Zikir, 67)



**41.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku gotiye: Min got: "Ey Resûlê Xwedê! Kahina tiştin ji me re digotin û gotina wan rast diderket." Pêxember (s.) wiha kerem kir: *"Ev ew gotina rast ya ku cinekî bi dest xistiye û bi dostê xwe dide zanîn ew jî sed gotinên derew serve zêde dike ye."*

(M5816 Muslim, Selam, 122)



**42.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku dema zarokek diwelidî tanîne balê û wê jî bi nêta bereketê ji wan re dua dikir. Vêca rojekî zarokek anîne cem wê, dema ewê rabû balgihê serê wî deynê (rast bike), dît vaye kêrek di bin balgihê wî de ye, pirsî ma ev çî ye? Gotin: Me ew ji ber cina daniye bin serê wî. Vêca Hz. Aîşe ew kêr girt û avêt û men'a wan ji vî karî kir û got: "Bê guman Resûlê Xwedê bêoxirî baweriyek şaş didît û jê nefret dikir." Vêca Hz. Aîşe jî men'a mirovan jê kir.

(EM912 Buxarî, el-Edebu'l-mufred, 314)



٤٣- عَنْ يَحْيَى بْنِ جَعْدَةَ قَالَ: كَانَ خَالِدُ بْنُ الْوَلِيدِ يَفْزَعُ مِنَ اللَّيْلِ حَتَّى يَخْرُجَ وَمَعَهُ سَيْفُهُ، فَخُشِيَ عَلَيْهِ أَنْ يُصِيبَ أَحَدًا، فَشَكَا ذَلِكَ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: "إِنَّ جِبْرِيلَ قَالَ لِي: إِنَّ عِفْرِيتًا مِنَ الْجِنِّ يَكِيدُكَ، فَقُلْ: أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللَّهِ التَّامَّةِ الَّتِي لاَ يُجَاوِزُهنَّ بَرٌّ وَلاَ فَاجِرٌ مِنْ شَرِّ مَا يَنْزِلُ مِنَ السَّمَاءِ وَمَا يَعْرُجُ فِيهَا، وَمِنْ شَرِّ مَا ذَرَأَ فِي الْأَرْضِ وَمَا يَخْرُجُ مِنْهَا، وَمِنْ شَرِّ فِتَنِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ، وَمِنْ شَرِّ كُلِّ طَارِقٍ إِلاَّ طَارِقًا يَطْرُقُ بِخَيْرٍ يَا رَحْمَنُ."

# ŞEYTAN
## NEYARÊ MIROVAN YÊ EZELÎ

٤٤- عَنْ أَنَسٍ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ الشَّيْطَانَ يَجْرِى مِنَ الْإِنْسَانِ مَجْرَى الدَّمِ."



٤٥- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ إِبْلِيسَ قَالَ لِرَبِّهِ: بِعِزَّتِكَ وَجَلَالِكَ لَا أَبْرَحُ أُغْوِي بَنِي آدَمَ مَا دَامَتْ الْأَرْوَاحُ فِيهِمْ فَقَالَ [له] اللَّهُ: فَبِعِزَّتِي وَجَلالِي لاَ أَبْرَحُ أَغْفِرُ لَهُمْ مَا اسْتَغْفَرُونِي."



**43.** Ji Yehya bin Cu'de (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Xalid bin el-Welîd (r.) şevê wisa ditirsiha heta dirahijte şûrê xwe bi şev diderkete jiderve. Vêca tirsihan ku zererê bide hinekan. Li servêyekê Xalid şikayeta vî halê xwe ji Pexember (s.) re kir. Pêxember (s.) got: *"Cibrîl ji min re got: İfrîtek ji cina dixaze zererê bide te, vêca tu vê duayê bixwêne: Ez ji şerrê neqenciyên ji asîmanan didakevine erdê û ji yên ji erdê bilindê asîmanan dibin û ji şerrê tiştên li ser erdê bi cih bûne û yên ji bin erdê derdikevin, û ji şerrê fitneya şev û rojê û ji bilî yên qenc ji şerrê her rewşên ji nişkave derdikevin xwe dispêrime Ellah û xwe dispêrime wan gotinên Xwedê yên mezin ewên ku tu qenc û tu neqenc nagihine wan, ya Rehman!"*

(MŞ23589 İbn Ebî Şeybe, Musannef, Tib, 28; ME19831 Ebdurrezzaq, Musannef, XI, 35)

# ŞEYTAN
## NEYARÊ MIROVAN YÊ EZELÎ

**44.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şeytan wekê xwînê di nava însan de digerihê."*

(M5678 Muslim, Selam, 23: B3281 Buxarî, Bed'u'l-xelq, 11)



**45.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku gotiye. "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'İblîs ji Rebbê xwe re got: 'Ez son dixwim bi izzet û meznahiya te heta rihê wan di bedena wan de be ezê zarokên Adem ji rê derêxim.' Vêca Xwedê jêre got: 'Ez sond dixwim bi izzet û meznahiya xwe heta ew efukirinê ji min bixazin ezê jî wan efû bikim.'"*

(HM11264 Ibn Hanbel, III, 29)



٤٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلشَّيْطَانِ لَمَّةً بِابْنِ آدَمَ وَلِلْمَلَكِ لَمَّةً فَأَمَّا لَمَّةُ الشَّيْطَانِ فَإِيعَادٌ بِالشَّرِّ وَتَكْذِيبٌ بِالْحَقِّ وَأَمَّا لَمَّةُ الْمَلَكِ فَإِيعَادٌ بِالْخَيْرِ وَتَصْدِيقٌ بِالْحَقِّ فَمَنْ وَجَدَ ذَلِكَ فَلْيَعْلَمْ أَنَّهُ مِنَ اللَّهِ فَلْيَحْمَدِ اللَّهَ وَمَنْ وَجَدَ الْأُخْرَى فَلْيَتَعَوَّذْ بِاللَّهِ مِنَ الشَّيْطَانِ [الرَّجِيمِ]."



٤٧- عَنْ سَبْرَةَ بْنِ أَبِي فَاكِهٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ الشَّيْطَانَ قَعَدَ لِابْنِ آدَمَ بِأَطْرُقِهِ فَقَعَدَ لَهُ بِطَرِيقِ الْإِسْلَامِ فَقَالَ: تُسْلِمُ وَتَذَرُ دِينَكَ وَدِينَ آبَائِكَ وَآبَاءِ أَبِيكَ فَعَصَاهُ فَأَسْلَمَ..."



٤٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الْمُؤْمِنَ لَيُنْضِي شَيَاطِينَهُ كَمَا يُنْضِي أَحَدُكُمْ بَعِيرَهُ فِي السَّفَرِ."

# ÎNSAN
## HEYÎNEK PÎROZ

٤٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "النَّاسُ مَعَادِنُ، خِيَارُهُمْ فِي الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِي الْإِسْلَامِ، إِذَا فَقُهُوا فِي الدِّينِ."



**46.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şeytan jî û melek jî xwe nêzî zarokên Adem dikin. Nêzîkbûna Şeytan ewe ku berê wî bide neqenciyê û heqqê pê bide tekzîbkirin e, nêzîkbûna melek jî ewe ku berê înasan bide xêrê û heqiyê pê bide tesdîqkirin e. Kî evê (telqîna Melek) bibîne bila zanibe ev ji Xwedê ye û bila hemdê Xwedê bike û kî ya dîtir (wesweseya Şeytên) hiss bike bila ji şeytanê hatî recimkirin û ji rehmê hatî dûrkirin xwe bispêrîne Xwedê."*

(T2988 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 2)



**47.** Ji Sebre bin Ebî Fakih (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Şeytan ketiye tev rêyên însan de, ketiye devê rêya (wî dibe) Îslamê de jî û jêre dibêje: Ma tuyê çawa dev ji dînê xwe dînê bavê xwe û dînê bavên bavê xwe berdî û misilman bibî? Belê ew însan bîya şeytên nake û misilman dibe."*

(N3136 Nesaî, Cîhad, 19)



**48.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: " *Mîna ku yek ji we di seferê de deveha xwe diwestîne bêguman bawermend jî wisa şeytanên xwe diwestîne."*

(HM8927 Ibn Hanbel, II, 380)

# ÎNSAN
## HEYÎNEK PÎROZ

**49.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Însan (weke) me'dena ne, Qenctirê wan yên di dewra cahiliyetê de, di dewra Îslamê de jî qenctirê wan in, heke ku dîn qenc fêhm kiribin."*

(HM9068 Ibn Hanbel, II, 391)



٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ "كُلُّ مَوْلُودٍ يُولَدُ عَلَى الْفِطْرَةِ، فَأَبَوَاهُ يُهَوِّدَانِهِ أَوْ يُنَصِّرَانِهِ أَوْ يُمَجِّسَانِهِ."



٥١- أَنَّ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عُمَرَ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّمَا النَّاسُ كَالْإِبِلِ الْمِائَةِ لاَ تَكَادُ تَجِدُ فِيهَا رَاحِلَةً."



٥٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "قَدْ أَذْهَبَ اللَّهُ عَنْكُمْ عُبِّيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَفَخْرَهَا بِالْآبَاءِ، مُؤْمِنٌ تَقِيٌّ وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ، وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَآدَمُ مِنْ تُرَابٍ."

# RIH
## ÎKSÎRA JIYANÊ

٥٣- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ قَالَ كُنْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِى حَرْثٍ بِالْمَدِينَةِ، وَهْوَ يَتَوَكَّأُ عَلَى عَسِيبٍ، فَمَرَّ بِنَفَرٍ مِنَ الْيَهُودِ فَقَالَ بَعْضُهُمْ سَلُوهُ عَنِ الرُّوحِ. وَقَالَ بَعْضُهُمْ لاَ تَسْأَلُوهُ لاَ يُسْمِعُكُمْ مَا تَكْرَهُونَ. فَقَامُوا إِلَيْهِ فَقَالُوا يَا أَبَا الْقَاسِمِ حَدِّثْنَا عَنِ الرُّوحِ. فَقَامَ سَاعَةً يَنْظُرُ فَعَرَفْتُ أَنَّهُ يُوحَى إِلَيْهِ، فَتَأَخَّرْتُ عَنْهُ حَتَّى صَعِدَ الْوَحْيُ، ثُمَّ قَالَ وَيَسْأَلُونَكَ عَنِ الرُّوحِ قُلِ الرُّوحُ مِنْ أَمْرِ رَبِّى.



**50.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her zarok li ser fitret tête dinyayê, vêca dê û bavê wî ewî an dikine cihû an fileh an jî Mecûsî, weke mesela pez ku sexlem (bê qusûr) tê dinyayê, ma (ne hûn bi şeqitînin) hûn pezeka guhşeqitî di nav wan de dibînin?"*



(B1385 Buxarî, Cena'iz, 92)

**51.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Însan weke sed devehên barkirîne, hema hema yeka kêr suwarbûnê were tu nabînê"*



(B6498 Buxarî, Riqaq, 35)

**52.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bê guman Xwdê xurûra cahiliyetê û pesindana bi bav û kala ji nav we rakir, vêca 'bawermendê mutteqî' û 'gunehkarê rûreş' hene. Mirov zarokên Adem in û Adem jî ji axê ye."*

(T3956 Tirmizî, Menaqib, 74)

# RIH
## ÎKSÎRA JIYANÊ

**53.** Ji İbn Mesûd (Xwedê jê razî be) hatiye ragihandin gotiye: "Ez li Medînê bi Pêxember (s.) re di nav zeviyekî de bûm. Pêxember (s.) xwe bi şivikekê dara xurmê girtibû, vêca liqayî komek Cihûyan hat. Hinekan ji wan gotin: 'Pirsa rih jê bikin', hinekan jî gotin: 'Pirsa jê nekin qene hûn tiştek ku xweşa we neçe nebihîzin.' Belê rabûn hatin û gotin: 'Ya Ebe'l-Qasim! Ka behsa rih ji me re bike.' Li ser vê yekê Pêxember (s.) middetek fikirî, min zanî ku wehiy jê re tê. Bo vê yekê heta wehiy temam bû min xwe hinekî jê paş hişt. Piştre got: "*Pirsa rih ji te dikin, bêje: Rih ji emrê Rebbê min e.*" (el-İsra: 17, 85)"

(B7297-Buxarî, I'tîsam, 3)



٥٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ بِحَدِيثٍ يَرْفَعُهُ قَالَ "النَّاسُ مَعَادِنُ كَمَعَادِنِ الْفِضَّةِ وَالذَّهَبِ خِيَارُهُمْ فِى الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِى الْإِسْلاَمِ إِذَا فَقُهُوا وَالْأَرْوَاحُ جُنُودٌ مُجَنَّدَةٌ فَمَا تَعَارَفَ مِنْهَا ائْتَلَفَ وَمَا تَنَاكَرَ مِنْهَا اخْتَلَفَ."



٥٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ "إِذَا خَرَجَتْ رُوحُ الْمُؤْمِنِ تَلَقَّاهَا مَلَكَانِ يُصْعِدَانِهَا..." وَيَقُولُ أَهْلُ السَّمَاءِ رُوحٌ طَيِّبَةٌ جَاءَتْ مِنْ قِبَلِ الْأَرْضِ صَلَّى اللَّهُ عَلَيْكِ وَعَلَى جَسَدٍ كُنْتِ تَعْمُرِينَهُ. فَيُنْطَلَقُ بِهِ إِلَى رَبِّهِ عَزَّ وَجَلَّ ثُمَّ يَقُولُ انْطَلِقُوا بِهِ إِلَى آخِرِ الْأَجَلِ." قَالَ "وَإِنَّ الْكَافِرَ إِذَا خَرَجَتْ رُوحُه -... وَيَقُولُ أَهْلُ السَّمَاءِ رُوحٌ خَبِيثَةٌ جَاءَتْ مِنْ قِبَلِ الْأَرْضِ. قَالَ فَيُقَالُ انْطَلِقُوا بِهِ إِلَى آخِرِ الْأَجَلِ."



٥٦- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ كَعْبٍ الْأَنْصَارِىِّ أَنَّهُ أَخْبَرَهُ أَنَّ أَبَاهُ كَانَ يُحَدِّثُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا نَسَمَةُ الْمُؤْمِنِ طَائِرٌ يَعْلُقُ فِى شَجَرِ الْجَنَّةِ حَتَّى يَرْجِعَ إِلَى جَسَدِهِ يَوْمَ يُبْعَثُ."

# NEFS
## QADA MUCADELA QENCÎ Û NEQENCIYÊ

٥٧- عَنْ فَضَالَةَ بْنِ عُبَيْدٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ فِى حَجَّةِ الْوَدَاعِ: "... وَالْمُجَاهِدُ مَنْ جَاهَدَ نَفْسَهُ فِي طَاعَةِ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ."



**54.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Însan weke me'denên zêr û zîv me'den me'den in. Qenctirê wan yên di dewra cahiliyetê de, di dewra Îslamê de jî qenctirê wan in, heke ku dîn qenc fêhm kiribin. Rih jî gurûbinên kombûyîne, vêca ew rihên lihevdikin hevudu digirin û yên li hevnakin ji hevudu vediqetihin."*

(M6709 Muslim, Bîrr we sile, 160; B3336, Buxarî, Ehadîsu'l-Enbiya, 2)



**55.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Dema rihê muminekî ji bedena wî derkeve du melaîket pêşwaziya wî dikin û dihilkişênine asîmanan. Ehlê asîmanan dibêjin: 'Ji erdê ve rihek qenc hat, Xwedâ rehmê li te û li wê bedena ku te jîn dayîbuyê bike.' Piştre jî wî dibine ji Rebbê wî re, piştre Rebbê wî ferman dike: 'Evî bibine piş sînûr (sidretu'l-muntehayê).' Dema rihê gawurekî ji bedena wî derkeve ehlê asîmana dibêjin: 'ji erdê ve rihek neqenc hat' û têgotin: 'Evî bibin dawiya sînûr (cehennemê).'

(M7221, Muslim, Cennet we Sıfatu Neîmîha we Ehlîha, 75)



**56.** Li gor ku Ebdurrehman bin Ke'b el-Ensârî (r.) ji bavê xwe Ke'b bin Malik (r.) ragihandî Resûlê Xwedê (s.) wiha kerem kiriye: *"Rihê muminî weke wî çûkê ji darê cennetê dixwê ye, kengî bedena wî vejiya (Roja Qiyametê) wê vegere bedena xwe."*

(İM4271, Ibn Maceh, Zuhd, 32; N2075, Nesaî, Cenaiz, 117; MU572, Muwatta, Cena'iz, 16)

# NEFS
## QADA MUCADELA QENCÎ Û NEQENCIYÊ

**57.** Ji Fedale bin 'Ubeyd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di Heccetu'l-Wda'ê de gotiye: "*... Mucahid ew kese ku di rêya taetê Xwedê de bi nefsa xwe re mucadele dike.*"

(HM24465 Ibn Hanbel, VI, 22; T1621 Tirmizî, Feda'ilu'l-cihad, 2)



٥٨- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْكَيِّسُ مَنْ دَانَ نَفْسَهُ وَعَمِلَ لِمَا بَعْدَ الْمَوْتِ وَالْعَاجِزُ مَنْ أَتْبَعَ نَفْسَهُ هَوَاهَا وَتَمَنَّى عَلَى اللَّهِ."



٥٩- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهَا عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَقُولَنَّ أَحَدُكُمْ: خَبُثَتْ نَفْسِى. وَلَكِنْ لِيَقُلْ: لَقِسَتْ نَفْسِى."



٦٠- عَنْ حُذَيْفَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَنْبَغِى لِلْمُؤْمِنِ أَنْ يُذِلَّ نَفْسَهُ." قَالُوا: وَكَيْفَ يُذِلُّ نَفْسَهُ؟ قَالَ: "يَتَعَرَّضُ مِنَ الْبَلاَءِ لِمَا لاَ يُطِيقُهُ."



٦١- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ: لاَ أَقُولُ لَكُمْ إِلاَّ كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ قَالَ: كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْعَجْزِ وَالْكَسَلِ وَالْجُبْنِ وَالْبُخْلِ وَالْهَرَمِ وَعَذَابِ الْقَبْرِ اللَّهُمَّ! آتِ نَفْسِى تَقْوَاهَا وَزَكِّهَا أَنْتَ خَيْرُ مَنْ زَكَّاهَا أَنْتَ وَلِيُّهَا وَمَوْلاَهَا اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ عِلْمٍ لاَ يَنْفَعُ وَمِنْ قَلْبٍ لاَ يَخْشَعُ وَمِنْ نَفْسٍ لاَ تَشْبَعُ وَمِنْ دَعْوَةٍ لاَ يُسْتَجَابُ لَهَا."

**58.** Ji Şeddad bin Ews (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Aqilmend ew kese ku serdestê nefsa xwe ye û ji bo jiyana piştî mirinê kar dike. Belengaz ew kese ku li pey daxaziyên nefsa xwe diçe û (serde jî) hêviya xêrê ji Xwedê dike."*

(T2459 Tirmizî, Sıfatu'l-qıyame, 25; İM4260 Ibn Maceh, Zuhd, 31)



**59.** Ji Aîşe (Xwedê jê razîbe) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nebe ku yek ji hewe bêje: Nefsa min pîs bûye, belê bila bêje dilê min teng bûye."*

(B6179 Buxarî, Edeb, 100)



**60.** Ji Huzeyfe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne layîqe ku mumin nefsa xwe zelîl bike" li ser vê yekê pirsîn: "Ma mumin çawa nefsa xwe zelîl dike?" Resûlê Xwedê wiha bersiv da: "Xwe li karên ku nikaribe ji bin rabe diqewmênê vêca zehf bela têne serê wî."*

(İM4016 Ibn Maceh, Fîten, 21)



**61.** Zeyd bin Erqem (r.) wiha gotiye: "Ez tenê we hînê tişta ku Resûlê Xwedê (s.) em hînê dikirin hîn dikim. Resûlê Xwedê (s.) digot: *"Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te ji bêtaqetiyê, ji tiraliyê, ji kunûjiyê, ji newêrektiyê, ji kalbûnê, ji 'ezabê qebrê. Xwedayê min! Teqwayê (têgihaştina mesuliyetê) bixe nesîbê nefsa min tu wê paqij bike, tu çêtirînê kesê wê paqij bikî yî, dost û xwedanê wê tu wî, Xwedayê min! Ez ji dilê natirsê, ji nefsa têrnabe, ji ilmê feydê nade û ji duayên nayê qebulkirin xwe dispêrime te."*

(M6906 Muslim, Zikir we dua we tewbe ve îstîxfar, 73)

# ROJ, HEYV Û SITÊR
## QENDÎLÊN ASÎMANAN

٦٢- عَنْ أَبِى بُرْدَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: ...فَرَفَعَ رَأْسَهُ إِلَى السَّمَاءِ وَكَانَ كَثِيرًا مِمَّا يَرْفَعُ رَأْسَهُ إِلَى السَّمَاءِ فَقَالَ: "النُّجُومُ أَمَنَةٌ لِلسَّمَاءِ فَإِذَا ذَهَبَتِ النُّجُومُ أَتَى السَّمَاءَ مَا تُوعَدُ..."



٦٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ عَدْوَى وَلاَ هَامَةَ وَلاَ نَوْءَ وَلاَ صَفَر."



٦٤- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّهَا قَالَتْ: خَسَفَتِ الشَّمْسُ فِى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَصَلَّى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِالنَّاسِ... ثُمَّ انْصَرَفَ وَقَدِ انْجَلَتِ الشَّمْسُ، فَخَطَبَ النَّاسَ، فَحَمِدَ اللَّهَ، وَأَثْنَى عَلَيْهِ ثُمَّ قَالَ: "إِنَّ الشَّمْسَ وَالْقَمَرَ آيَتَانِ مِنْ آيَاتِ اللَّهِ، لاَ يَنْخَسِفَانِ لِمَوْتِ أَحَدٍ وَلاَ لِحَيَاتِهِ، فَإِذَا رَأَيْتُمْ ذَلِكَ فَاذْكُرُوا اللَّهَ وَكَبِّرُوا، وَصَلُّوا وَتَصَدَّقُوا..."



# ROJ, HEYV Û SITÊR
## QENDÎLÊN ASÎMANAN

**62.** Li gor ku Ebû Burde (r.) ji bavê xwe ragihandî Resûlê Xwedê (s.) serê xwe hilda, li asîmana meyze kir, -ji xwe Pêxember (s.) pir cara berê xwe dida asîmana- û got: *"Sitêr êmnahiya asîmana ne, kengî sitêr herin (winda bibin) wî çaxî ewa hatî we'dkirin (Qiyamet) wê rabe."*

(M6466 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 207)



**63.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her nexweşî ne weba ye, mirî ji bo heyf jê were hildan di sûretê bûmê de li ser qebrê nasekine, sitêr nikarin baranê bibarênin û di meha Saferê de bêoxurî jî nîne."*

(M5794 Muslim, Selam, 106)



**64.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Di dema Pêxember (s.) de roj xirabû, Vêca Resûlê Xwedê bi mirovan re nimêj kir. Dema roj (hate sihra berê) derket, ewî jî nimêj dawî kir. Rabû xutbeyek xwend, hemdê Xwedê kir û pesnê wî dan piştre wiha got: *'Roj û heyv du ayetên Xwedê ne, ne jibo mirina tu kesî, ne jî ji bo welidandina tu kesî xira nabin. Dema we dît roj an heyv xirabûn zikrê Xwedê bikin, tekbîra bînin, nimêj bikin û sedeqa bidin."*

(B1044 Buxarî, Kusûf, 2; M2089 Muslim, Kusûf, 1)



٦٥- حَدَّثَنِى بِلاَلُ بْنُ يَحْيَى بْنِ طَلْحَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ طَلْحَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا رَأَى الْهِلاَلَ قَالَ: "اللَّهُمَّ أَهْلِلْهُ عَلَيْنَا بِالْيُمْنِ وَالْإِيمَانِ وَالسَّلاَمَةِ وَالْإِسْلاَمِ رَبِّى وَرَبُّكَ اللَّهُ."

# ZEMAN
## NEBZA HEYÎNÊ

٦٦- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ رضي الله عنه: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "قَالَ اللَّهُ: يَسُبُّ بَنُو آدَمَ الدَّهْرَ، وَأَنَا الدَّهْرُ، بِيَدِى اللَّيْلُ وَالنَّهَارُ."



٦٧- عَنْ أَبِى بَكْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الزَّمَانَ قَدِ اسْتَدَارَ كَهَيْئَتِهِ يَوْمَ خَلَقَ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضَ، السَّنَةُ اثْنَا عَشَرَ شَهْرًا، مِنْهَا أَرْبَعَةٌ حُرُمٌ، ثَلاَثَةٌ مُتَوَالِيَاتٌ: ذُو الْقَعْدَةِ وَذُو الْحِجَّةِ وَالْمُحَرَّمُ، وَرَجَبُ مُضَرَ الَّذِى بَيْنَ جُمَادَى وَشَعْبَانَ."



٦٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "لاَ تَقُومُ السَّاعَةُ حَتَّى يُقْبَضَ الْعِلْمُ، وَتَكْثُرَ الزَّلاَزِلُ، وَيَتَقَارَبَ الزَّمَانُ، وَتَظْهَرَ الْفِتَنُ، وَيَكْثُرَ الْهَرْجُ -وَهُوَ الْقَتْلُ الْقَتْلُ- حَتَّى يَكْثُرَ فِيكُمُ الْمَالُ فَيَفِيضُ."



**65.** Bîlal bin Yehya bin Telhe bin Ubeydullah (r.) bi rêya bavê xwe ji bapîrê xwe Telhe bin Ubeydullah (r.) ragihandiye ku dema Pêxember (s.) hilal didît digot: *"Ya Rebbî! Tu hîlalê bi berekt, îman, selamet û İslamê ser me de bîne. (Ey Hilal!) Rebbê min û Rebbê te Ellah e."*

(T3451 Tirmizî, De'ewat, 50)

# ZEMAN
## NEBZA HEYÎNÊ

**66.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê ferman kiriye: Însan sixêfa li zemanî dike, hal ewe ku zeman ez im, roj û şev di destê min de ne."*

(B6181 Buxarî, Edeb, 101)



**67.** Ji Ebû Bekrete (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Miheqqeq zeman vegeriyaye weke halê xwe yê ku Xwedê roja ewil erd û asîman afirandîn, sal duwazdeh meh e, ji wan çar, mehên heram in (di wan de cengkirin heram e) sisê ji wan li pey hevin; Zu'l-Qa'de, Zu'l-Hicce û Muherrem e, (ya dîtir) Receba Muder ya di neqeba Cumada (el-Axir) û Şe'banê de ye."*

(B3197 Buxarî, Bed'u'l-xelq, 2)



**68.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta ilim ranebe, erdhej zêde nebe, zeman kin nebe, kuştin zêde nebe û heta fûrandinên mal zêde nebe Qiyamet ranabe."*

(B1036 Buxarî, Istîsqa, 27)



٦٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ذَكَرَ يَوْمَ الْجُمُعَةِ فَقَالَ: "فِيهِ سَاعَةٌ لاَ يُوَافِقُهَا عَبْدٌ مُسْلِمٌ وَهُوَ يُصَلِّى يَسْأَلُ اللَّهَ شَيْئًا إِلاَّ أَعْطَاهُ إِيَّاهُ."



٧٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "نِعْمَتَانِ مَغْبُونٌ فِيهِمَا كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ: الصِّحَّةُ وَالْفَرَاغُ."

# DINYA
## ZEVIYA AXÎRETÊ

٧١- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ قَالَ: إِنِّى عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ ... قَالَ: "كَانَ اللَّهُ وَلَمْ يَكُنْ شَيْءٌ قَبْلَهُ، وَكَانَ عَرْشُهُ عَلَى الْمَاءِ، ثُمَّ خَلَقَ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضَ."



٧٢- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ جَلَسَ عَلَى الْمِنْبَرِ فَقَالَ: "عَبْدٌ خَيَّرَهُ اللَّهُ بَيْنَ أَنْ يُؤْتِيَهُ زَهْرَةَ الدُّنْيَا وَبَيْنَ مَا عِنْدَهُ، فَاخْتَارَ مَا عِنْدَهُ."



**69.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) behsa Roja Înê kir û got: *"Têde demek heye ku ebdê Misilman di nimêjêde liqayî wî demî were û tiştek ji Xwedê bixaze mitleqa wê Xwedê daxaza wî jêre pêkbîne."*

(M1969 Muslim, Cum'a, 13)



**70.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Du nimet hene pirê însanan di derheqê wan de xapîyane: Sihhet û zemanê vale."*

(B6412 Buxarî, Rîqaq, 1)

# DINYA
## ZEVIYA AXÎRETÊ

**71.** 'Imran bin Husayn (r.) dibêje: "Ez li cem Pêxember (s.) bûm (li ser pirsa yekê Yemenî ka heyînê çawa destpêkir) Resûlê Xwedê ev bersiv da: *'Berî her tiştî Xwedê hebû û berî wî tiştek nebû, Erşê wî li ser avê bû. Piştre Wî asîman û erd afirandin.'*"

(B7418 Buxarî, Tewhîd, 22)



**72.** Ji Ebû Seîd (el-Xudrî) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) li ser mînberê rûnişt û (behsa xwekir) got: *"Xwedê ebdekî xwe di neqeba nimetê dinyayê û (ecra) li cem xwe jêre hazirkirî de muxeyyer kir, ewî ecra li cem Xwedê bijart."*

(M6170 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 2)



٧٣- عَنْ أَبِى ذَرٍّ الْغِفَارِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ الزَّهَادَةُ فِى الدُّنْيَا بِتَحْرِيمِ الْحَلاَلِ، وَلاَ فِى إِضَاعَةِ الْمَالِ. وَلَكِنِ الزَّهَادَةُ فِى الدُّنْيَا أَنْ لاَ تَكُونَ بِمَا فِى يَدَيْكَ أَوْثَقَ مِنْكَ بِمَا فِى يَدِ اللَّهِ..."



٧٤- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. فَإِنَّ نَفْسًا لَنْ تَمُوتَ حَتَّى تَسْتَوْفِيَ رِزْقَهَا، وَإِنْ أَبْطَأَ عَنْهَا. فَاتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. خُذُوا مَا حَلَّ، وَدَعُوا مَا حَرُمَ."



٧٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: أَخَذَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِمَنْكِبِى فَقَالَ: "كُنْ فِى الدُّنْيَا كَأَنَّكَ غَرِيبٌ أَوْ عَابِرُ سَبِيلٍ."

# EBDÎTÎ
## EBDÎTIYA XWEDÊ

٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَتَنَزَّلُ رَبُّنَا تَبَارَكَ وَتَعَالَى كُلَّ لَيْلَةٍ إِلَى السَّمَاءِ الدُّنْيَا حِينَ يَبْقَى ثُلُثُ اللَّيْلِ الآخِرُ فَيَقُولُ: مَنْ يَدْعُونِى فَأَسْتَجِيبَ لَهُ، مَنْ يَسْأَلُنِى فَأُعْطِيَهُ، مَنْ يَسْتَغْفِرُنِى فَأَغْفِرَ لَهُ."



**73.** Ji Ebû Zerr el-Xifarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zuhda dinyayê ne bi heramkirina tişta helal e ne jî bi belavkirina malî ye. Belê zuhda dinyayê ewe ku ewlewiya te bi tişta di destê te de ji yên di destê Xwedê de ye, ne zêdetir be."*

(ÎM4100 Ibn Maceh, Zuhd, 1)



**74.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî mirovno! Pêşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Lewra bêguman dereng bimîne jî tu kes berî rizqê jêre hatî teqdîr kirin namire. Naxwe Pêşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Tişta helal ji xwe re bibin û ya heram be xwe jê dûr bikin."*

(ÎM2144 Ibn Maceh, Tîcaret, 2)



**75.** Ji Ebdullah bin Cabir (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Pêxemberê Xwedê (s.) bi namilê min girt û got: *'Di dinyayê de weke biyaniyekî an jî weke rêwîkî be.'*"

(B6416 Buxarî, Rîqaq, 3)

# EBDÎTÎ
## EBDÎTIYA XWEDÊ

**76.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rebbê me Tebareke we Teala her şev dema sêyeka şevê ya dawî dimîne, tête asîmanê dinyayê û wiha ferman dike: Kî heye dua bike ez duaya wî qebûl bikim, kî heye ji min bixaze ez bidimê, kî heye daxaza efûkirinê ji min bike ez wî efû bikim?"*

(B6321 Buxarî, De'ewat, 14)



٧٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: كُنْتُ خَلْفَ النَّبِيِّ ﷺ يَوْمًا فَقَالَ: "يَا غُلاَمُ! إِنِّى أُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ احْفَظِ اللَّهَ يَحْفَظْكَ احْفَظِ اللَّهَ تَجِدْهُ تُجَاهَكَ إِذَا سَأَلْتَ فَاسْأَلِ اللَّهَ وَإِذَا اسْتَعَنْتَ فَاسْتَعِنْ بِاللَّهِ وَاعْلَمْ أَنَّ الأُمَّةَ لَوِ اجْتَمَعَتْ عَلَى أَنْ يَنْفَعُوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَنْفَعُوكَ إِلاَّ بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ لَكَ وَإِنِ اجْتَمَعُوا عَلَى أَنْ يَضُرُّوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَضُرُّوكَ إِلاَّ بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ عَلَيْكَ..."



٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَعالى قَالَ: مَنْ عَادَى لِى وَلِيًّا فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِى بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُه عَلَيْهِ، وَمَا زَالَ عَبْدِى يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أَحْبَبْتُهُ، فَكُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِى يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِى يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِى يَبْطُشُ بِهَا وَرِجْلَهُ الَّتِى يَمْشِى بِهَا، وَإِنْ سَأَلَنِى لَأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِى لأُعِيذَنَّهُ..."



٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ "يَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِى بِى، وَأَنَا مَعَهُ إِذَا ذَكَرَنِى، فَإِنْ ذَكَرَنِى فِى نَفْسِهِ ذَكَرْتُهُ فِى نَفْسِى، وَإِنْ ذَكَرَنِى فِى مَلَإٍ ذَكَرْتُهُ فِى مَلَإٍ خَيْرٍ مِنْهُمْ، وَإِنْ تَقَرَّبَ شِبْرًا إِلَيَّ تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ ذِرَاعًا، وَإِنْ تَقَرَّبَ إِلَيَّ ذِرَاعًا تَقَرَّبْتُ إِلَيْهِ بَاعًا، وَإِنْ أَتَانِى يَمْشِى أَتَيْتُهُ هَرْوَلَةً."



**77.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Rojekî ez li piş Pêxember (s.) suwar bûm (em diçûn). Pêxember (s.) gote min: *'Xorto! Ezê te hînê çend gotina bikim: Tu heqqê Xwedê biparêze ewê jî te parêzê, heqqê Xwedê biparêze tuyê Wî her li cem xwe bibînî. Wextê te xwest ji Xwedê bixaze. Ku te alîkarî xwest ji Xwedê alîkariyê bixaze. Zanibe ku alem hemû ji bo ku feydeyekî bigihîne te li hev kom bibin ji bilî miqdarê Xwedê ji tere teqdîr kirî nikarin feydeyek dîtir bigihînine te. Heke ku alem hemû ji bo ku zererekî bigihîne te li hev kom bibin ji bilî miqdarê Xwedê teqdîr kirî nikarin zererek dîtir bigihînine te."*

(T2516 Tirmizî, Sıfatu'l-qıyame, 59)



**78.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xweda Teala ferman kiriye: Kî neyartiya dostekî min bike ez jêre ilana herbê dikim. Ebdê min ji tiştên ku min li ser wî ferz kirîn bitişteka dîtir ku hez jê bikim xwe nêzî min nekiriye. Ebdê min bi ibadetên nafîle xwe nêzî min dike heta ku ez jê hez dikim. (dema min jê hez kir) Êdî ez dibime guhê wî yê pê dibihîze, çavên wî yê pê dibîne, destê wî yê pê digire, lingê wî yê pê dimeşe. Heke ji min bixwaze ezê teqez daxaza wî pêk bînim, heke xwe bispêre min mitleqa ezê wî siperim."*

(B6502 Buxarî, Riqaq, 38)



**79.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle dibêje: 'Ebdê min çi hêviyê ji min bike ez weke hêviya wî me (ezê hêviya wî pêk bînim) dema ew min bîr tîne ez bi wîre me, heke ew di nefsa xwe de min bîr bîne ezê jî wî di nefsa xwe de bîr bînim, heke ew di nav komekî de min bîr bîne ezê di nav komeke qenctir de wî bîr bînim, heke ew bostekî nêzîkê min bibe ezê gezekî nêzîkê wî bibim, heke ew gezekî nêzîkê min bibe ezê qulaçekî nêzîkê wî bibim, heke ew bi meş were ba min ezê bibez herim ba wî."*

(B7405 Buxarî, Tewhîd, 15; M6832 Muslim, Zikir û dua û tewbe û îstîxfar, 21)



٨٠- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَحَبَّ لِقَاءَ اللَّهِ أَحَبَّ اللَّهُ لِقَاءَهُ، وَمَنْ كَرِهَ لِقَاءَ اللَّهِ كَرِهَ اللَّهُ لِقَاءَهُ."

# DÎN
## REHBERA ÎLAHÎ

٨١- عَنْ عِيَاضِ بْنِ حِمَارٍ الْمُجَاشِعِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ ذَاتَ يَوْمٍ فِى خُطْبَتِهِ: "أَلاَ! إِنَّ رَبِّى أَمَرَنِى أَنْ أُعَلِّمَكُمْ مَا جَهِلْتُمْ مِمَّا عَلَّمَنِى يَوْمِى هَذَا كُلُّ مَالٍ نَحَلْتُهُ عَبْدًا حَلاَلٌ وَإِنِّى خَلَقْتُ عِبَادِى حُنَفَاءَ كُلَّهُمْ..."



٨٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ سُئِلَ النَّبِيُّ ﷺ أَيُّ الْأَدْيَانِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ عَزَّ وجَلَّ؟ قَالَ: "الْحَنِيفِيَّةُ السَّمْحَةُ."



٨٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "إِنَّ الدِّينَ يُسْرٌ، وَلَنْ يُشَادَّ الدِّينَ [أَحَدٌ] إِلاَّ غَلَبَهُ، فَسَدِّدُوا وَقَارِبُوا وَأَبْشِرُوا، وَاسْتَعِينُوا بِالْغَدْوَةِ وَالرَّوْحَةِ وَشَيْءٍ مِنَ الدُّلْجَةِ."



**80.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî bixazê bigihe Xwedê, Xwedê jî hez dike bigihe wî, kî nexwaze bigihe Xwedê, Xwedê jî naxaze bigihê wî."*

(B6507 Buxarî, Rîqaq, 41; M6820 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 14)

# DÎN
## REHBERA ÎLAHÎ

**81.** Ji 'Iyad bin Himar el-Mucaşi'î (r.) hatiye ragihandin ku rojekî Resûlê Xwedê (s.) di xutbeyeke de gotiye: *"Hayedar bin! Bêguman Rebbê min emrê min kir ku ji tiştên îro bi min daye zanîn û yên ku hûn pê nehayedarin hînê we bikim. (Xwedê wiha ferman kir): "Çi malê min dabê ebdê xwe ew jêre helal e. Bêguman min ebdên xwe tev li ser dînê henîf afirandine."*

(M7207 Muslim, Cennet we sıfatu neîmiha ee ehliha, 63)



**82.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwede (s.) hate pirsîn: Xwedê zehftir hez ji kîjan dînî dike? Pêxember (s.) got: *"Dînê hêsan yê Henîf."*

(EM287 Buxarî, el-Edebu'l-mufred, 108; HM2107 Ibn Hanbel, I, 236)



**83.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Bêguman dîn hêsane. Kî mirovê dîn zehmet bike wê ji pêkanîna dîn aciz bibe. Vêca (di dîn de) zêdegaviya nekin, rêya rasterast bigirin, (ji bo mukâfata ku hûn ji dêl emelên qenc bistînin) bi keyf û şabin. Ji dema sibeh û êvarê û hinek jî ji şevê feydê bistînin (ku hûn karibin taetê xwe dewam bikin."*

(B39 Buxarî, Îman, 29)



٨٤- عَنْ تَمِيمٍ الدَّارِيِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الدِّينُ النَّصِيحَةُ" قُلْنَا: لِمَنْ؟ قَالَ: "لِلَّهِ وَلِكِتَابِهِ وَلِرَسُولِهِ وَلِأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ وَعَامَّتِهِمْ."



٨٥- عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ السُّوَائِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ يَقُولُ: "لاَ يَزَالُ هَذَا الدِّينُ ظَاهِرًا عَلَى كُلِّ مَنْ نَاوَأَهُ وَلَا يَضُرُّهُ مَنْ خَالَفَهُ أَوْ فَارَقَهُ."

**84.** Ji Temîm ed-Darî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Dîn semîmiyet e."* Me got: ji kîre? Got: *"Ji Xwedê re, ji kitêba Wî re, ji Resûlê Wî re, ji pêşîvanê misilmanan re û ji tev misilmanan re."*

(M196 Muslim, Îman, 95; D4944 Ebû Dawûd, Edeb, 59)



**85.** Cabir bin Semure es-Suwaî (r.) dibêje: "Min di Heccetu'l-Weda'ê de ji Pêxember (s.) bihîst digot: *"Ev dîn wê her wext serdestê tev kesên neyartiyê jêre dikin be û kesên ji dîn derkevin an jî muxalefeta wî bikin tuwwî zererê nadinê."*

(HM21245 Ibn Hanbel, V, 100)

# ILIM

## ILIM ZANÎNA ILMÊ YE

٨٦- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "نَضَّرَ اللَّهُ امْرَأً سَمِعَ مِنَّا حَدِيثاً فَبَلَّغَهُ كَمَا سَمِعَهُ، فَرُبَّ مُبَلَّغٍ أَوْعَى مِنْ سَامِعٍ..."



٨٧- عَنْ قَيْسِ بْنِ كَثِيرٍ قَالَ: قَدِمَ رَجُلٌ مِنَ الْمَدِينَةِ عَلَى أَبِى الدَّرْدَاءِ وَهُوَ بِدِمَشْقَ فَقَالَ: مَا أَقْدَمَكَ يَا أَخِى؟ فَقَالَ: حَدِيثٌ بَلَغَنِى أَنَّكَ تُحَدِّثُهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ... قَالَ: فَإِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ سَلَكَ طَرِيقًا يَبْتَغِى فِيهِ عِلْمًا سَلَكَ اللَّهُ بِهِ طَرِيقًا إِلَى الْجَنَّةِ وَإِنَّ الْمَلاَئِكَةَ لَتَضَعُ أَجْنِحَتَهَا رِضًا لِطَالِبِ الْعِلْمِ وَإِنَّ الْعَالِمَ لَيَسْتَغْفِرُ لَهُ مَنْ فِى السَّمَوَاتِ وَمَنْ فِى الْأَرْضِ حَتَّى الْحِيتَانُ فِى الْمَاءِ وَفَضْلُ الْعَالِمِ عَلَى الْعَابِدِ كَفَضْلِ الْقَمَرِ عَلَى سَائِرِ الْكَوَاكِبِ إِنَّ الْعُلَمَاءَ وَرَثَةُ الْأَنْبِيَاءِ إِنَّ الْأَنْبِيَاءَ لَمْ يُوَرِّثُوا دِينَارًا وَلاَ دِرْهَمًا إِنَّمَا وَرَّثُوا الْعِلْمَ فَمَنْ أَخَذَ بِهِ فَقَدْ أَخَذَ بِحَظٍّ وَافِرٍ.



# ILIM
## ILIM ZANÎNA ILMÊ YE

**86.** Ji Ebu'd-Derda (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) xutbeyek ji me re îrad kir û got: *'Xwedê rûyê wî kesê ku hedîsek ji me bihîstibe û weke ji me bihîstî neqlê hinek dîtir kirî geş û şa bike. Lewra pir kesên hedîs neqlê wan bûyî hene ji yên bihîstîn fêhmtir in.'*"

(DM236 Darimî, Muqeddime, 24; T2657 Tirmizî, Ilim, 7)



**87.** Qeys bin Kesîr (r.) dibêje: "Zilamek ji Medînê hate cem Ebu'd-Derda (r.) wexta li Dimeşqê bû. Ebu'd-Derda jê pirsî: 'Birayê min! Ma tu bo çi hatî vir?' Got: 'Hedîseka ku tu ji Pêxember (s.) neqil dike (ez anime vir)'... Ebu'd-Derda (r.) got: 'Min bihîst Resûlê Xwedê (s.) digot: *'Çi kesê ji bo ilmê bi keve rêyekî, wê Xwedê berê wî bide rêya Cennetê. Bêguman Melaîket ji keyfa karê wî perê xwe ji talibê ilmêre dideynin. Ehlê erdê û ehlê asîmana heta hûtên avê de tev jibo Xwedê wan efû bike ji ehlê ilmê re dua dikin. Qedrê alimî (li cem Xwedê) pêşberê qedrê abidî de weke qedrê heyvê pêşberî stêrkên din e. Bêguman alim warisê Pêxemberan e. Pêxemberan ne dînar û ne jî dirhem tu tişt mîras nehiştine, ewan tenê ilm mîras hiştine. Vêca kesê ilm girtibe bêguman ewî parekî zehf bi dest xistiye.'*"

(T2682 Tirmizî, Ilim, 19)



٨٨- عَنْ أَبِى مُوسَى عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ مَا بَعَثَنِى اللَّهُ مِنَ الْهُدَى وَالْعِلْمِ كَمَثَلِ الْغَيْثِ الْكَثِيرِ أَصَابَ أَرْضًا، فكَانَ مِنْهَا نَقِيَّةٌ قَبِلَتِ الْمَاءَ، فَأَنْبَتَتِ الْكَلأَ وَالْعُشْبَ الْكَثِيرَ، وَكَانَتْ مِنْهَا أَجَادِبُ أَمْسَكَتِ الْمَاءَ، فَنَفَعَ اللَّهُ بِهَا النَّاسَ، فَشَرِبُوا وَسَقَوْا وَزرَعُوا، وَأَصَابَ مِنْهَا طَائِفَةً أُخْرَى، إِنَّمَا هِىَ قِيعَانٌ لاَ تُمْسِكُ مَاءً، وَلاَ تُنْبِتُ كَلأً، فَذَلِكَ مَثَلُ مَنْ فَقُهَ فِى دِينِ اللَّهِ وَنَفَعَهُ مَا بَعَثَنِى اللَّهُ بِهِ، فَعَلِمَ وَعَلَّمَ، وَمَثَلُ مَنْ لَمْ يَرْفَعْ بِذَلِكَ رَأْسًا، وَلَمْ يَقْبَلْ هُدَى اللَّهِ الَّذِى أُرْسِلْتُ بِهِ."



٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا مَاتَ الْإِنْسَانُ انْقَطَعَ عَنْهُ عَمَلُهُ إلاَّ مِنْ ثَلاثَةٍ: إِلاَّ مِنْ صَدَقَةٍ جَارِيَةٍ أَوْ عِلْمٍ يُنْتَفَعُ بِهِ أَوْ وَلَدٍ صَالِحٍ يَدْعُو لَهُ."



٩٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ قَلْبٍ لاَ يَخْشَعُ وَمِنْ دُعَاءٍ لاَ يُسْمَعُ وَمِنْ نَفْسٍ لاَ تَشْبَعُ وَمِنْ عِلْمٍ لاَ يَنْفَعُ أَعُوذُ بِكَ مِنْ هَؤُلاَءِ الْأَرْبَعِ."

**88.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew hidayet û ilmê ku Xwedê bi min re şiyandî weke wê barana pirr a ku dibare ser erdê ye. Vêca deverinê erdê hene paqij e, avê li xwe digire û gelek giya û şînayî şîn dike, deverinê dîtir hene dêm in avê di xwe de digirin, Xwedê pê feydê digihîne însanan, bêweko însan jê divexwin û pê (pez û dewarê xwe) av didin û hem jî pê çandinê dikin. Hinek erdên dîtir hene rasterast û hilû ne baran li wan jî dibare belê ne avê di xwe de digire ne jî giya şîn dike. Vêca mesela wî kesê ku dînê Xwedê qenc fêhm kirî (û rast hîn bûyî) û tişta ku Xwedê ez pê hinartim feyde da wî, hem hîn bû û hem da hîn kirin û mesela wî kesê ku (dema ev bihîst ji quretiya xwe) serê xwe bi balêve ranekir û ew hîdayeta ku Xwedê ez pê rêkirim qebûl nekiriye, ev e."*

(B79 Buxarî, Ilim, 20)



**89.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Wextê însan bimre ji bilî sê tiştan deftera emelê wî tê girtin: Sedeqa carîye (ya ku feyda wê dewam dike), ilmê jê feyde tête dîtin û ew ewladê salih yê jêre dua dike."*

(M4223 Muslim, Wesiyyet, 14)



**90.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) wiha dua dikir: *"Ya Rebbî! Ez xwe dispêrime te ji dilê natirse, ji duayên nayê qebûl kirin û ji nefsa têr nabe û ji ilmê feyde nade. Ez ji van her çaran xwe dispêrime te (ey Xweda!)*

(T3482 Tirmizî, De'ewat, 68)

# WEHIY

## KELAMÊ XWEDÊ YÊ EZELÎ Û EBEDÎ

٩١- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ أَبُو بَكْرٍ ﷺ بَعْدَ وَفَاةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ لِعُمَرَ: انْطَلِقْ بِنَا إِلَى أُمِّ أَيْمَنَ نَزُورُهَا كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَزُورُهَا. فَلَمَّا انْتَهَيْنَا إِلَيْهَا بَكَتْ فَقَالاَ لَهَا: مَا يُبْكِيكِ؟ مَا عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ لِرَسُولِهِ ﷺ . فَقَالَتْ: مَا أَبْكِى أَنْ لاَ أَكُونَ أَعْلَمُ أَنَّ مَا عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ لِرَسُولِهِ ﷺ وَلَكِنْ أَبْكِى أَنَّ الْوَحْيَ قَدِ انْقَطَعَ مِنَ السَّمَاءِ. فَهَيَّجَتْهُمَا عَلَى الْبُكَاءِ فَجَعَلاَ يَبْكِيَانِ مَعَهَا.



٩٢- عَنْ عَائِشَةَ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أَنَّهَا قَالَتْ: أَوَّلُ مَا بُدِئَ بِهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنَ الْوَحْيِ الرُّؤْيَا الصَّالِحَةُ فِى النَّوْمِ، فَكَانَ لاَ يَرَى رُؤْيَاً إِلاَّ جَاءَتْ مِثْلَ فَلَقِ الصُّبْحِ، ثُمَّ حُبِّبَ إِلَيْهِ الْخَلاَءُ، وَكَانَ يَخْلُو بِغَارِ حِرَاءٍ فَيَتَحَنَّثُ فِيهِ- وَهُوَ التَّعَبُّدُ -اللَّيَالِيَ ذَوَاتِ الْعَدَدِ قَبْلَ أَنْ يَنْزِعَ إِلَى أَهْلِهِ، وَيَتَزَوَّدُ لِذَلِكَ، ثُمَّ يَرْجِعُ إِلَى خَدِيجَةَ، فَيَتَزَوَّدُ لِمِثْلِهَا، حَتَّى جَاءَهُ الْحَقُّ وَهُوَ فِى غَارِ حِرَاءٍ، فَجَاءَهُ الْمَلَكُ فَقَالَ: اقْرَأْ. قَالَ: "مَا أَنَا بِقَارِئٍ" قَالَ: "فَأَخَذَنِى فَغَطَّنِى حَتَّى بَلَغَ مِنِّى الْجَهْدَ، ثُمَّ أَرْسَلَنِى فَقَالَ: اقْرَأْ. قُلْتُ: مَا أَنَا بِقَارِئٍ. فَأَخَذَنِى فَغَطَّنِى الثَّانِيَةَ حَتَّى بَلَغَ مِنِّى الْجَهْدَ، ثُمَّ أَرْسَلَنِى فَقَالَ: اقْرَأْ. فَقُلْتُ مَا أَنَا بِقَارِئٍ. فَأَخَذَنِى فَغَطَّنِى الثَّالِثَةَ، ثُمَّ أَرْسَلَنِى فَقَالَ: "اقْرَأْ بِاسْمِ رَبِّكَ الَّذِى خَلَقَ خَلَقَ الْإِنْسَانَ مِنْ عَلَقٍ اقْرَأْ وَرَبُّكَ الأَكْرَمُ..."



# WEHIY
## KELAMÊ XWEDÊ YÊ EZELÎ Û EBEDÎ

**91.** Enes (r.) gotiye: "Ebû Bekir (r.) piştî wefata Pêxember (s.) gote 'Umer (r.) "Ka were em tevde herin Ummu Eymenê ziyaret bikin mîna ku Resûlê Xwedê (s.) ew ziyared dikir. Ebû Bekir dibêje: 'Dema em gihatine cemê (Ummu Eymen) giriya. Jêre gotin: 'Tişta (ni'meta) ku li cem Xwedê Teala ye ji Pêxemberê wî re xêrtir e bo çi tu digirî?' Ewê got: 'Bêguman ez ne ji ber wî qasî digirîm ku nizanim tişta li cem Xwedê Teala ji Pêxemberê wi re xêrtir e. Lêbelê ez ji bo ku wehiy ji asîmanan qut bûye digirîm.' (Bi vê gotinê) Ummu Eymen'ê ew herdu jî anîn heyecanê û herduyan jî bi Ummu Eymen'ê re dest bi girî kirin."

(M6318 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 103; İM1635 Ibn Maceh, Cena'iz, 65)



**92.** Dayîka Mumina Aîşe (r.) gotiye: "Serê pêşî wehya ji Resûlê Xwedê (s.) re dihat bi dîtina xewnên rast (ru'yay-i sadiqa) di xewê de dest pê kir. Bêweko çi xewna bidîta weke şeveqa tavê rast derdiket. Piştre tenêmayîn lê xweş hat. Vêca (diçû) Şikefta Hîrayê û bi şevên bêhesab ji Xwedê re nimêj û îbadet dikir bêyî ku vegere nav maliyên xwe. Ji bo vêyekê zad û xwarina xwe jî temin dikir. Piştre cardîn diziviri cem Xedicê û carek din zadê xwe pêktanî û diçû. Nîhayet rojekê ew di Şikefta Hîrayê de bû heq (wehiy) jê re hat. Melaîket hat û jê re got: 'Bixwîne!' Ewî (s.) got: 'Ez ne xwenda me.' Pêxember got: 'Melaiket hat û cara duyem ez girtim û heta jê hat ez guvaştim heta bêtaqet mam, piştre ez berdam û ji min re got: 'Bixwîne!' Min got: 'Ez ne xwenda me.' Cara sêyem ez girtim û bi şideh guvaştim û dûvre ez berdam û ji min re got: 'Bixwîne.!' min got: 'Ez ne xwenda me.' Ez girtim û ez guvaştım piştre ez berdam û got: *'Bixwîne bi navê Xwedayê ku afirandiye. Ewê ku însan ji parçek xwîna hişk û ter afirandiye. Bixwîne û Rebbê te xwedan kerem e. ...*"

(Eleq 96/1-3; B3 Buxarî, Bed'u'l-wehy, 1)



٩٣- عَنْ عَائِشَةَ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ ﵂ : أَنَّ الْحَارِثَ بْنَ هِشَامٍ ﵁ سَأَلَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! كَيْفَ يَأْتِيكَ الْوَحْيُ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَحْيَانًا يَأْتِينِى مِثْلَ صَلْصَلَةِ الْجَرَسِ وَهُوَ أَشَدُّهُ عَلَيَّ فَيُفْصَمُ عَنِّى وَقَدْ وَعَيْتُ عَنْهُ مَا قَالَ، وَأَحْيَانًا يَتَمَثَّلُ لِيَ الْمَلَكُ رَجُلاً فَيُكَلِّمُنِى فَأَعِي مَا يَقُولُ."



٩٤- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِىِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَكْتُبُوا عَنِّى وَمَنْ كَتَبَ عَنِّى غَيْرَ الْقُرْآنِ فَلْيَمْحُهُ..."



٩٥- عَنْ أَبِى مُوسَى عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ مَا بَعَثَنِى اللَّهُ مِنَ الْهُدَى وَالْعِلْمِ كَمَثَلِ الْغَيْثِ الْكَثِيرِ أَصَابَ أَرْضًا، فَكَانَ مِنْهَا نَقِيَّةٌ قَبِلَتِ الْمَاءَ، فَأَنْبَتَتِ الْكَلأَ وَالْعُشْبَ الْكَثِيرَ، وَكَانَتْ مِنْهَا أَجَادِبُ أَمْسَكَتِ الْمَاءَ، فَنَفَعَ اللَّهُ بِهَا النَّاسَ، فَشَرِبُوا وَسَقَوْا وَزَرَعُوا، وَأَصَابَ مِنْهَا طَائِفَةً أُخْرَى، إِنَّمَا هِيَ قِيعَانٌ لاَ تُمْسِكُ مَاءً، وَلاَ تُنْبِتُ كَلأً، فَذَلِكَ مَثَلُ مَنْ فَقُهَ فِى دِينِ اللَّهِ وَنَفَعَهُ مَا بَعَثَنِى اللَّهُ بِهِ، فَعَلِمَ وَعَلَّمَ، وَمَثَلُ مَنْ لَمْ يَرْفَعْ بِذَلِكَ رَأْسًا، وَلَمْ يَقْبَلْ هُدَى اللَّهِ الَّذِى أُرْسِلْتُ بِهِ."

**93.** Ji dayîka Mumina Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Haris bin Hîşam (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Ya Resûlê Xwedê! Ma wehiy çawa ji te re tê?" Resûlê Xwedê (s.) wiha bersiv da: *"Carna weke dengê zengil tê, ev ji min re gelek giran tê. Dema deng qut dibe (ez dinêrim) ku min ew wehiy hemî fehm kiriye û jiber kiriye. Carna jî melaîket di sûretê însanekî de tê û bi min re diştexilê û ez tişta gotî hemiyê fêhm dikim û jiber dikim."*

(B2 Buxarî, Bed'u'l-wehy, 1)



**94.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Hemî tiştên we ji min bihîstî nenivîsin. Kî ji bilî Qur'anê tiştek ji min bihîstibe û nivîsîbe bila îmha bike."*

(M7510 Muslim, Zuhd ve reqa'îq, 72)



**95.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew hidayet û ilmê ku Xwedê bi min re şiyandî, weke wê barana pirr a ku dibare ser erdê ye. Vêca deverinê erdê hene paqij e, avê li xwe digire û gelek giya û şînayî şîn dike, deverinê dîtir hene dêm in avê di xwe de digirin, Xwedê pê feydê digihîne însanan, bêweko însan jê divexwin û pê (pez û dewarê xwe) av didin û hem jî pê çandinê dikin. Hinek erdên dîtir hene rasterast û hilû ne baran li wan jî dibare belê ne avê di xwe de digire ne jî giya şîn dike. Vêca mesela wî kesê ku dînê Xwedê qenc fêhm kirî (û rast hîn bûyî) û tişta ku Xwedê ez pê hinartim feyde da wî, hem hîn bû û hem da hîn kirin û mesela wî kesê ku (dema ev bihîst ji quretiya xwe) serê xwe bi balêve nerakir û ew hîdayeta ku Xwedê ez pê rêkirim qebûl nekiriye ev e."*

(B79 Buxarî, Ilim, 20)

# TEFSÎR Û TE'WÎL
## HEWLDANA TÊGIHIŞTINA WEHYÊ

٩٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: سَمِعَ النَّبِيُّ ﷺ قَوْمًا يَتَدَارَءُونَ فَقَالَ: "إِنَّمَا هَلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ بِهَذَا ضَرَبُوا كِتَابَ اللَّهِ بَعْضَهُ بِبَعْضٍ وَإِنَّمَا نَزَلَ كِتَابُ اللَّهِ يُصَدِّقُ بَعْضُهُ بَعْضًا فَلاَ تُكَذِّبُوا بَعْضَهُ بِبَعْضٍ فَمَا عَلِمْتُمْ مِنْهُ فَقُولُوا وَمَا جَهِلْتُمْ فَكِلُوهُ إِلَى عَالِمِهِ."



٩٧- عَنْ جُنْدَبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "اقْرَءُوا الْقُرْآنَ مَا ائْتَلَفَتْ قُلُوبُكُمْ، فَإِذَا اخْتَلَفْتُمْ فَقُومُوا عَنْهُ."



٩٨- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قَالَ فِى الْقُرْآنِ بِغَيْرِ عِلْمٍ فَلْيَتَبَوَّأْ مَقْعَدَهُ مِنَ النَّارِ."



٩٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: ضَمَّنِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِلَيْهِ وَقَالَ: "اللَّهُمَّ عَلِّمْهُ الْحِكْمَةَ وَتَأْوِيلَ الْكِتَابِ."

# TEFSÎR Û TE'WÎL
## HEWLDANA TÊGIHIŞTINA WEHYÊ

**96.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji bapîrê xwe ragihandiye ku Pêxember (s.) sehkir ku komek mirov minaqeşe dikin. Pêxember (s.) ji wan re got: *"Ew kesên beriya we bi vî şiklî helak bûn. Hinek (ayet) ji kitêba Xwedê bi hinekên (ayetên) dîtir re (bi nêta dîtina berevajiyan) muqayese dikirin. Welhal Kitêba Xwedê bi şikleke ku hinek jê hinekên dîtir tesdîq dike nazil bûye. Bo vêyekê bi qismekî ji kitêba Xwedê qismek dîtir tekzîb/mandel nekin. Tişta hûn jê zanin bêjin û ya hûn nizanin hewalê kesê pêzane bikin."*

(HM6741 Ibn Hanbel, II, 185)



**97.** Ji Cundub bin Ebdilla (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Heta ku dilê we bi hevre yek û digel hev be Qur'anê bixwênin û muzakere bikin, çi dema hûn ketin ixtîlaf û minaqeşê de (devê wê bigirin) ji ser rabin."*

(B5060 Buxarî, Feda'ilu'l-Qur'an, 37; M6777 Muslim, Ilim, 3)



**98.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Kî di derbarê Qur'anê de bê zanebûn biştexile bila cihê xwe di cehnemê de hazir bike."*

(T2950 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 11)



**99.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) ez dam ber singa xwe ve û got: *'Ya Rebbî! Tu wî hînê hikmetê û tewîlkirina (şîrovekirina âyetên meneya wan ên girtî) Qur'anê bike."*

(İM166 Ibn Maceh, Sunnet, 11)

# SUNNET
## REHBERTIYA PÊXEMBER

١٠٠- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِي خُطْبَتِهِ بَعْدَ التَّشَهُّدِ "إِنَّ أَحْسَنَ الْحَدِيثِ كِتَابُ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ وَأَحْسَنَ الْهَدْيِ هَدْيُ مُحَمَّدٍ."



١٠١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِى فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ، وَمَنْ عَصَانِى فَقَدْ عَصَى اللَّهَ..."



١٠٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا أَمَرْتُكُمْ بِهِ فَخُذُوهُ وَمَا نَهَيْتُكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُوا."



١٠٣- عَنِ الْعِرْبَاضِ بْنِ سَارِيَةَ قَالَ: وَعَظَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا بَعْدَ صَلاَةِ الْغَدَاةِ مَوْعِظَةً بَلِيغَةً ذَرَفَتْ مِنْهَا الْعُيُونُ وَوَجِلَتْ مِنْهَا الْقُلُوبُ فَقَالَ رَجُلٌ: إِنَّ هَذِهِ مَوْعِظَةُ مُوَدِّعٍ فَمَاذَا تَعْهَدُ إِلَيْنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: "أُوصِيكُمْ بِتَقْوَى اللَّهِ وَالسَّمْعِ وَالطَّاعَةِ وَإِنْ عَبْدٌ حَبَشِيٌّ فَإِنَّهُ مَنْ يَعِشْ مِنْكُمْ يَرَى اخْتِلاَفًا كَثِيرًا وَإِيَّاكُمْ وَمُحْدَثَاتِ الْأُمُورِ فَإِنَّهَا ضَلاَلَةٌ فَمَنْ أَدْرَكَ ذَلِكَ مِنْكُمْ فَعَلَيْهِ بِسُنَّتِى وَسُنَّةِ الْخُلَفَاءِ الرَّاشِدِينَ الْمَهْدِيِّينَ عَضُّوا عَلَيْهَا بِالنَّوَاجِذِ.



# SUNNET
## REHBERTIYA PÊXEMBER

**100.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di xutbeyên xwe de piştî teşehhudê wiha digot: *"Kelamê herî baş kitêba Xwedê Ezze we Celle ye û rehbertiya herî baş rehbertiya Muhemmed e."*

(HM14484 Ibn Hanbel, III, 320)



**101.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Kî îtaeta min bike (bi ya min bike) ewî îtaa Xwedê kiriye û kî bêemriya min bike ewî bêemriya Xwedê kiriye."*

(M4749 Muslim, Imare, 33)



**102.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Ez emrê we bi çi bikim, pêkbînin û men'a we ji çi bikim xwe jê dûr bixin (nekin)."*

(İM1, Ibn Maceh, Sunnet, 1)



**103.** el-'Irbad bin Sariye (r.) dibêje: "Rojekî piştî nimêja sibehê Resûlê Xwedê (s.) we'zek wisa bite'sîr ji mere kir çavan hestêr rijandin û tirs kete dilan de. Vêca zilamekî got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ev weke we'za xatirxwestinê ye, ka tu çi şîretan li me dike?' Pêxember (s.) got: '*Ez şîreta teqwatiya Xwedê û şîreta lêguhdarîkirin û îtaeta (rêvebirên hewe) li we dikim, çendan ew rêvebir koleyek Hebeşî jî be. Bêguman yên ku ji we bijîn dê gelek îxtîlafan bibînin. Vêca nebê hûn li pey tiştên nû (bid'etan) herin! Lewra ew şaşîtîne (tiştên ji rê derin) Kesên ji we bigihe wan dewra bila xwe bi sinneta min/bi rêya min û bi sinneta Xelîfeyên Raşid, ewên ku li ser hidayetê ne, bigrin û bi dinanê xweyê kursiya (bi şideh) pê bigirin.*'"

(T2676 Tirmizî, Ilim, 16; D4607 Ebû Dawûd, Sunnet, 5)



١٠٤- عَنْ مَالِكٍ أَنَّهُ بَلَغَهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "تَرَكْتُ فِيكُمْ أَمْرَيْنِ لَنْ تَضِلُّوا مَا تَمَسَّكْتُمْ بِهِمَا كِتَابَ اللَّهِ وَسُنَّةَ نَبِيِّهِ."

# FIQIH Û ICTÎHAD
## TÊGIHIŞTINA KÛR Û GERA LI HEQÎQETÊ

١٠٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَقْبِضُ الْعِلْمَ انْتِزَاعًا، يَنْتَزِعُهُ مِنَ الْعِبَادِ، وَلَكِنْ يَقْبِضُ الْعِلْمَ بِقَبْضِ الْعُلَمَاءِ، حَتَّى إِذَا لَمْ يَبْقَ عَالِمٌ، اتَّخَذَ النَّاسُ رُءُوسًا جُهَّالاً فَسُئِلُوا، فَأَفْتَوْا بِغَيْرِ عِلْمٍ، فَضَلُّوا وَأَضَلُّوا."



١٠٦- عَنْ مُعَاذٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ بَعَثَ مُعَاذًا إِلَى الْيَمَنِ فَقَالَ: "كَيْفَ تَقْضِى؟" فَقَالَ: أَقْضِى بِمَا فِى كِتَابِ اللَّهِ. قَالَ: "فَإِنْ لَمْ يَكُنْ فِى كِتَابِ اللَّهِ؟" قَالَ: فَبِسُنَّةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "فَإِنْ لَمْ يَكُنْ فِى سُنَّةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ؟" قَالَ: أَجْتَهِدُ رَأْيِى. قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى وَفَّقَ رَسُولَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ."



**104.** Ji Malik (r.) hatiye ragihandin ku bihîstiye Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: "*Min du tişt hiştine ji we re heta ku hûn xwe bi wan bigirin tu cara hûn ji rê naderkevin: Kitêba Xwedê û sinneta Pêxemberê Wî.*"

(MU1628 Muwetta, Qeder, 3)

# FIQIH Û ICTÎHAD
## TÊGIHIŞTINA KÛR Û GERA LI HEQÎQETÊ

**105.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: "*Bêguman Xwedê, ilmê ji nav ebdên xwe nakişîne û nabe. Belê bi wefata aliman ilmê (ji nav ebdan) radike. Heta ku êdî alimek tenê jî nemîne, vêca mirov hinekên nezan ji xwe re dikine pêşîvan, îja wê ji wan bê pirskirin, ew jî bê ilm û zanîn wê fetwayan bidin, wê hem ew bixwe ji rê derkevin û hem wê kesên dîtir jî ji rê derîxin.*"

(B100 Buxarî, Ilim, 34)



**106.** Ji Muaz (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) ew (bi walîtî) şiyande Yemenê. Vêca Resûlê Xwedê (s.) jê pirsî: "*(Dema de'weyek/dozek hate te) ma tê çawa hukum bike?*" Muaz got: "Ezê li gorî kitêba Xwedê hukum bidim." Resûlê Xwedê (s.) got: "*Heke di kitêba Xwedê de hukmê wê de'wayê tunebe (tê çawa bikî)?*" Muaz got: "Ezê li gor Sinneta Resûlê Xwedê hukum bidim." Resûlê Xwedê (s.) got: "*Heke hukmê wê de'wayê di Sinneta Resûlê Xwedê de jî tunebe (tuyê çi bikî)?*" Muaz got: "Ezê li gor fikra xwe îctihad bikim (li gor wê hukum bidim)." Resûlê Xwedê (s.) got: "*Hemd ji wî Xwedayê ku qasidê Resûlê Xwedê muweffeq kirî re be.*"

(T1327 Tirmizî, Ehkam, 3; D3592 Ebû Dawûd, Qeda', (Eqdiye), 11)



١٠٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: مَنْ يُرِدِ اللَّهُ بِهِ خَيْرًا يُفَقِّهْهُ فِى الدِّينِ.“



١٠٨- عَنْ زَيْدِ بْنِ ثَابِتٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: ”نَضَّرَ اللَّهُ امْرَأً سَمِعَ مِنَّا حَدِيثًا فَحَفِظَهُ حَتَّى يُبَلِّغَهُ فَرُبَّ حَامِلِ فِقْهٍ إِلَى مَنْ هُوَ أَفْقَهُ مِنْهُ وَرُبَّ حَامِلِ فِقْهٍ لَيْسَ بِفَقِيهٍ.“



١٠٩- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: ”إِذَا حَكَمَ الْحَاكِمُ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَصَابَ فَلَهُ أَجْرَانِ. وَإِذَا حَكَمَ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَخْطَأَ فَلَهُ أَجْرٌ.“



١١٠- عَنْ وَابِصَةَ بْنِ مَعْبَدٍ الْأَسَدِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لِوَابِصَةَ: جِئْتَ تَسْأَلُ عَنِ الْبِرِّ وَالإِثْمِ؟ قَالَ قُلْتُ: نَعَمْ. قَالَ: فَجَمَعَ أَصَابِعَهُ فَضَرَبَ بِهَا صَدْرَهُ وَقَالَ اسْتَفْتِ نَفْسَكَ، اسْتَفْتِ قَلْبَكَ يَا وَابِصَةُ – ثَلاَثاً – الْبِرُّ مَا اطْمَأَنَّتْ إِلَيْهِ النَّفْسُ وَاطْمَأَنَّ إِلَيْهِ الْقَلْبُ، وَالْإِثْمُ مَا حَاكَ فِى النَّفْسِ وَتَرَدَّدَ فِى الصَّدْرِ وَإِنْ أَفْتَاكَ النَّاسُ وَأَفْتَوْكَ.

**107.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Xwedê xêra kî bixaze ewî di dîn de têxe feqîh (qabiliyeta têgihiştina mesleyên hûr dide wî)".*

(T2645 Tirmizî, Ilim, 1)



**108.** Ji Zeyd bin Sabit (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye ku wiha got: *"Xwedê rûyê wî kesê ku hedîsek ji me bihîstibe û ji bo bigihîne hinek dîtir jiber kiribe sipî û şa bike. Gelek naqilê fiqhê hene digihînin kesên ji wan feqîhtir (di fiqhê de pêşdetir) û gelek naqilê fiqhê hene ew bixwe ne feqîhin."*

(D3660 Ebû Dawûd, Ilim, 10; T2656 Tirmizî, Ilim, 7)



**109.** Ji 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku bihîst Resûlê Xwedê (s.) wiha digot: *"Dema ku hakim ictîhad bike û hukm bide vêca di içtîhada xwe de îsabet bike jêre du xêr hene, belê heke îctîhad (jibo bidestxistina heqiyê hewldan) kir û hukum da vêca di îçtîhada xwe de xeta kir jêre xêrek tenê heye."*

(M4487 Muslim, Eqdiye, 15)



**110.** Ji Wabise bin Me'bed el-Esedî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jêre got: *"Ma tu hatî pirsîyara xêr û gunehî bikî?"* Min got: "Belê". Wabîse dibêje: "Resûlê Xwedê tiliyên xwe li hev kom kirin û pê li singa xwe da û sê cara dubare kir û got: *"Şêwra xwe bike, şêwra qelbê xwe bike ey Wabise! Xêr ew e ku nefs pê rihet be û dil li ser bisekine. Guneh jî ew e ku di dil de nesekine û di singê de jî here û were (tereddudê çêke, nerihet bike) çendî mirov fetwayê bidin jî (guh li wan nedêre)."*

(DM2561 Darimî, Buyû', 2)

# EXLAQÊ ILMÊ
## EZMÛNA ALIMÎ BI EXLAQ

١١١- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ قَالَ ...سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "يُؤْتَى بِالرَّجُلِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فَيُلْقَى فِى النَّارِ، فَتَنْدَلِقُ أَقْتَابُ بَطْنِهِ، فَيَدُورُ بِهَا كَمَا يَدُورُ الْحِمَارُ بِالرَّحَى، فَيَجْتَمِعُ إِلَيْهِ أَهْلُ النَّارِ، فَيَقُولُونَ: يَا فُلاَنُ! مَا لَكَ؟ أَلَمْ تَكُنْ تَأْمُرُ بِالْمَعْرُوفِ وَتَنْهَى عَنِ الْمُنْكَرِ؟ فَيَقُولُ: بَلَى، قَدْ كُنْتُ آمُرُ بِالْمَعْرُوفِ وَلاَ آتِيهِ، وَأَنْهَى عَنِ الْمُنْكَرِ وَآتِيهِ."



١١٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ سُئِلَ عَنْ عِلْمٍ عَلِمَهُ ثُمَّ كَتَمَهُ أُلْجِمَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِلِجَامٍ مِنْ نَارٍ."



١١٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ تَعَلَّمَ عِلْمًا مِمَّا يُبْتَغَى بِهِ وَجْهُ اللَّهِ لاَ يَتَعَلَّمُهُ إِلاَّ لِيُصِيبَ بِهِ عَرَضًا مِنَ الدُّنْيَا لَمْ يَجِدْ عَرْفَ الْجَنَّةِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١١٤- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ حَسَدَ إِلاَّ فِى اثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِى الْحَقِّ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ حِكْمَةً فَهْوَ يَقْضِى بِهَا وَيُعَلِّمُهَا."



# EXLAQÊ ILMÊ
## EZMÛNA ALIMÎ BI EXLAQ

**111.** Ji Usame bin Zeyd (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: *"Wê di Roja Qiyametê de zilamek bê anîn û wê bê avêtin di Cehnemê de. Piştre dê roviyên wî ji zikê wî derkevin ji derve û wê di wî halî de di êgir de weke ker aşî digerîne bi roviyên xwe ve li dora xwe bizivire. Vêca ehlê cehnemê wê li wî kom bibin û wê ji wî re bêjin: Filankes! Ev çi hale tu têdayî? Ma qey te emrê kirina qenciyê û men'a ji xirabiyê ne dikir? Ew dibêje: Belê min emrê kirina qenciyê dikir, lêbelê min bi xwe nedikir û min men'a xirabiyê dikir belê min bixwe xirabî dikir."*

(M7483 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 51)



**112.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê ku di derbareyê tiştek dizanê de jê pirsek were pirsîn û zanebûna xwe veşêre wê (devê wî) Roja Qiyametê bi lixabek ji agir were lixabkirin."*

(T2649 Tirmizî, Ilim, 3; D3658 Ebû Dawûd, Ilim, 9)



**113.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Çi kesê ilmekî ku lazime ji bo rizaya xwedê were hînbûn, tenê jibo bidestkirina feydeyek dinyewî hîn bibe, ew kes Roja Qiyametê bêhna Cennetê nake."*

(D3664 Ebû Dawûd, Ilim, 12; HM8438 Ibn Hanbel, II, 338)



**114.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Hesed (xibtekirin) tenê di du tiştan de durust e: Zilamek ku Xwedê mal dayiyê vêca ew musselletê ser kiriye di heqî û qenciyê de dimezixîne û zilamek ku Xwedê hikmet/ilim dayiyê vêca ew li gor wê hukum dide û wê hînê (kesên dîtir) dike."*

(B1409 Buxarî, Zekat, 5; M1896 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruhâ, 268)



١١٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "اللّٰهُمَّ انْفَعْنِى بِمَا عَلَّمْتَنِى وَعَلِّمْنِى مَا يَنْفَعُنِى وَزِدْنِى عِلْمًا..."

# FERASET
## NÊRÎNA BI NÛRA XWEDÊ

١١٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "لَا يُلْدَغُ الْمُؤْمِنُ مِنْ جُحْرٍ وَاحِدٍ مَرَّتَيْنِ."



١١٧- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "لاَ حَلِيمَ إِلاَّ ذُو عَثْرَةٍ، وَلاَ حَكِيمَ إِلاَّ ذُو تَجْرِبَةٍ."



١١٨- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "اتَّقُوا فِرَاسَةَ الْمُؤْمِنِ، فَإِنَّهُ يَنْظُرُ بِنُورِ اللّٰهِ" ثُمَّ قَرَأَ: ﴿إِنَّ فِى ذَلِكَ لآيَاتٍ لِلْمُتَوَسِّمِينَ﴾.



١١٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "إِنَّ اللّٰهَ تَعالى قَالَ: مَنْ عَادَى لِى وَلِيًّا فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِى بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَىَّ مِمَّا افْتَرَضْتُه عَلَيْهِ، وَمَا زَالَ عَبْدِى يَتَقَرَّبُ إِلَىَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أَحْبَبْتُهُ، فَكُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِى يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِى يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِى يَبْطُشُ بِهَا وَرِجْلَهُ الَّتِى يَمْشِى بِهَا، وَإِنْ سَأَلَنِى لَأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِى لأُعِيذَنَّهُ..."

**115.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ya Rebbî! Feydê bi tiştên te hînê min kirîne bide min, û min hînê tiştên ku feyde didin bike û ilmê min zêde bike..."*

(T3599 Tirmizî, De'ewat 128; ÎM251 Ibn Maceh, Sunnet, 23)

# FERASET
## NÊRÎNA BI NÛRA XWEDÊ

**116.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin ji qulekê du cara nayê pêvedan."*

(B6133 Buxarî, Edeb, 83; M7498 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 63)



**117.** Ji Ebû Seîd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Helîmek (aqilmendek) ne şemitî û hekîmek bê xudan tecrube tuneye."*

(T2033 Tirmizî, Birr we sila, 86; EM565 Buxarî, el-Edebu'l-mufred, 199)



**118.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji feraseta muminî biparêzin. Lewra ew bi nûra Xwdê meyze dike."* Û piştre ev ayet xwend: *"Bêguman di vê da ji bo xwedanferasetan ibret hene."*

(Hîcr, 15/75), (T3127 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 15; MK7497 Taberanî, el-Mu'cemu'l-kebîr, VIII, 102)



**119.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xweda Teala ferman kiriye: Kî neyartiya dostekî min bike ez jêre îlana herbê dikim. Ebdê min ji tiştên ku min li ser wî ferz kirîn bi tişteka dîtir ku hez jê bikim, xwe nêzî min nekiriye. Ebdê min bi ibadetên nafîle xwe nêzî min dike heta ku ez jê hez dikim. (dema min jê hez kir) Êdî ez dibime guhê wî yê pê dibihîze, çavên wî yê pê dibîne, destê wî yê pê digire, lingê wî yê pê dimeşe. Heke ji min bixaze ezê mitleqa daxaza wî pêkbînim, heke xwe bispêre min mitleqa ezê wî sipêrim."*

(B6502 Buxarî, Rîqaq, 38)

# XEWN
## ALEMA XEWÊ

١٢٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "...الرُّؤْيَا ثَلاَثٌ: فَالرُّؤْيَا الصَّالِحَةُ بُشْرَى مِنَ اللَّهِ وَرُؤْيَا تَحْزِينٌ مِنَ الشَّيْطَانِ وَرُؤْيَا مِمَّا يُحَدِّثُ الْمَرْءُ نَفْسَهُ..."



١٢١- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا أَنَّهَا قَالَتْ: أَوَّلُ مَا بُدِئَ بِهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مِنَ الْوَحْيِ الرُّؤْيَا الصَّادِقَةُ فِي النَّوْمِ، فَكَانَ لاَ يَرَى رُؤْيَا إِلاَّ جَاءَتْ مِثْلَ فَلَقِ الصُّبْحِ...



١٢٢- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ: أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا رَأَى أَحَدُكُمْ رُؤْيَا يُحِبُّهَا فَإِنَّمَا هِيَ مِنَ اللَّهِ، فَلْيَحْمَدِ اللَّهَ عَلَيْهَا، وَلْيُحَدِّثْ بِهَا، وَإِذَا رَأَى غَيْرَ ذَلِكَ مِمَّا يَكْرَهُ، فَإِنَّمَا هِيَ مِنَ الشَّيْطَانِ، فَلْيَسْتَعِذْ مِنْ شَرِّهَا، وَلاَ يَذْكُرْهَا لِأَحَدٍ، فَإِنَّهَا لاَ تَضُرُّهُ."



١٢٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ مِنْ أَفْرَى الْفِرَى أَنْ يُرِيَ عَيْنَيْهِ مَا لَمْ تَرَ."



١٢٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "... وَأَصْدَقُكُمْ رُؤْيَا أَصْدَقُكُمْ حَدِيثًا..."

# XEWN
## ALEMA XEWÊ

**120.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xewn sê cure ne: (Yekem cure) Mizgîniya Xwedê xewna salih e (baş û qenc), (Duyem cure) Xewna êşdar ya ji Şeytên, (Sêyem cure) dîtina tiştinên ku mirov berê di heyata xwe de jiyayî ye."*

(M5905 Muslim, Ru'ya, 6)



**121.** Diya Mumina Aîşe (r.) gotiye: "Serê pêşî wehya ji Resûlê Xwedê re dihat bi dîtina xewnên rast (ru'yay-i sadîqa) di xewê de dest pê kir. Bêweko çi xewna bidîta weke şeveqa tavê rast diderket.

(B6982 Buxarî, Te'bîr, 1)



**122.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Kî ji we xewneka pê keyfa wî hat bibîne (bila zanibe) bêguman ew ji Xwedê ye û bila ser vêyekê hemdê Xwedê bike û bila (ji derdora xwe re) pê biştexile. Heke ji bilî vê xewnek pênexweş dît (bila zanibe ) bêguman ew ji Şeytên e û bila xwe ji şerrê wê biparêze (Xwedê) û bila ji tu kesîre behs neke. Bi vî miqamî ew xewn tuwî zererê nadiyê."*

(B6985 Buxarî, Te'bîr, 3)



**123.** Ji Ibn 'Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêbextiya herî mezin ewe ku mirov ji xewnek nedîtî re bêje min dîtiye."*

(B7043 Buxarî, Te'bîr, 45)



**124.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Gotinên kî ji we rasttir be xewnên wî rasttirin..."*

(M5905 Muslim, Ru'ya, 6)

١٢٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِعَمِّهِ، عِنْدَ الْمَوْتِ "قُلْ: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ، أَشْهَدُ لَكَ بِهَا يَوْمَ الْقِيَامَةِ" فَأَبَى-قَالَ-: فَأَنْزَلَ اللَّهُ: ﴿إِنَّكَ لاَ تَهْدِى مَنْ أَحْبَبْتَ...﴾ الآيَةَ.



١٢٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الدَّيْلَمِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عَمْرٍو يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ خَلَقَ خَلْقَهُ فِى ظُلْمَةٍ، فَأَلْقَى عَلَيْهِمْ مِنْ نُورِهِ، فَمَنْ أَصَابَهُ مِنْ ذَلِكَ النُّورِ اهْتَدَى، وَمَنْ أَخْطَأَهُ ضَلَّ، فَلِذَلِكَ أَقُولُ جَفَّ الْقَلَمُ عَلَى عِلْمِ اللَّهِ."



١٢٧- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَخْطُبُ النَّاسَ، يَحْمَدُ اللَّهَ وَيُثْنِى عَلَيْهِ بِمَا هُوَ أَهْلُهُ، ثُمَّ يَقُولُ: "مَنْ يَهْدِهِ اللَّهُ فَلاَ مُضِلَّ لَهُ، وَمَنْ يُضْلِلْ فَلاَ هَادِيَ لَهُ، وَخَيْرُ الْحَدِيثِ كِتَابُ اللَّهِ."



١٢٨- قَالَ الْحَسَنُ بْنُ عَلِيٍّ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا: عَلَّمَنِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ كَلِمَاتٍ أَقُولُهُنَّ فِى الْوِتْرِ "اللَّهُمَّ اهْدِنِى فِيمَنْ هَدَيْتَ، وَعَافِنِى فِيمَنْ عَافَيْتَ، وَتَوَلَّنِى فِيمَنْ تَوَلَّيْتَ،

**125.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di ber mirina apê xwe re, jêre got: *"Bêje: La îlahe îllellah (Ji bilî Xwedê/Ellah tu îlah tunene"* *qene ez jî Roja Qiyametê pê ji te re şehdebûnê bidim."* Belê qebul nekir. Li ser vê yekê Xwedê ev ayet nazil kir: *"Bêguman tu kesê jê hez dikî, nikarî hidayet bike."* (Qesas, 28/56)

(M134 Muslim, Îman, 41)



**126.** Ji Ebdullah ed-Deylemî (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Ebdullah bin 'Emr bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Xwedê Ezze we Celle mexlûqatên xwe di nava tarîtiyê de afirandin û nûra xwe li wan werand. Kesê ew nûr lê ketibe hidayet dibe û kesê lê neketibe ji rê derdikeve.'"* Ebdullah bin 'Emr dibêje: "Aha ji ber vê yekê ez dibêjim: 'Pêşber ilmê Xwedê de qelem zuwa bûye (Her tişt li gor ilmê Xwedê yê ezelî çêdibe)"

(T2642 Tirmizî, Îman, 18; HM6644 Ibn Hanbel, II, 176)



**127.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) dest bi gotina xwe dikir hemdê Xwedê dikir û pesnê Wî yê layîqê Wî dida piştre digot: *"Kesê Xwedê ew hidayet kiribe êdî keseke ku wî ji rê derêxe tuneye û çi kesê Xwedê ew ji rê derêxistibe kesekî ku wî hidayet bike tuneye û çêtirîn kelam kitêba Xwedê ye."*

(M2007 Muslim, Cum'a, 45)



**128.** Hesen bin Elî (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê ji bo ku di (sinneta) witrê de bixwênim ev dua hînê min kir: *'Ya Rebbî! Di nav wan kesên te hidayetkirîn de min jî hidayet bike, di nav kesên te sihhet û afiyet da-*

وَبَارِكْ لِى فِيمَا أَعْطَيْتَ، وَقِنِى شَرَّ مَا قَضَيْتَ، فَإِنَّكَ تَقْضِى وَلاَ يُقْضَى عَلَيْكَ، وَإِنَّهُ لاَ يَذِلُّ مَنْ وَالَيْتَ، تَبَارَكْتَ رَبَّنَا وَتَعَالَيْتَ.“

# KELÎMA ŞEHADETÊ
## BINGEHA ÎSLAMÊ

١٢٩- حَدَّثَنِى أَبِى عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”الْإِسْلاَمُ أَنْ تَشْهَدَ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ، وَتُقِيمَ الصَّلاَةَ، وَتُؤْتِىَ الزَّكَاةَ، وَتَصُومَ رَمَضَانَ، وَتَحُجَّ الْبَيْتَ إِنِ اسْتَطَعْتَ إِلَيْهِ سَبِيلاً.“



١٣٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”بُنِيَ الْإِسْلاَمُ عَلَى خَمْسٍ: شَهَادَةِ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ، وَإِقَامِ الصَّلاَةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَالْحَجِّ، وَصَوْمِ رَمَضَانَ.“



١٣١- حَدَّثَنَا عُبَادَةُ بْنُ الصَّامِتِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”مَنْ قَالَ: أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَحْدَهُ ﴿لاَ شَرِيكَ لَهُ﴾، وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ، وَأَنَّ عِيسَى عَبْدُ اللَّهِ وَابْنُ أَمَتِهِ وَكَلِمَتُهُ أَلْقَاهَا إِلَى مَرْيَمَ وَرُوحٌ مِنْهُ، وَأَنَّ الْجَنَّةَ حَقٌّ، وَأَنَّ النَّارَ حَقٌّ، أَدْخَلَهُ اللَّهُ مِنْ أَىِّ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ الثَّمَانِيَةِ شَاءَ.“



*ye wan afiyetê bide min jî, di nav kesên te ew hîmaye kirîn de min jî hîmaye bike, bereketê bixe nimetên te dayîne min, min ji şerrê hukmê te dayî, biparêze. Bêguman yê hukum dike Tu yî, keseke hukmê li ser te bike tuneye. Kesê tu dostê wî be tucara sernivz nabe. Tu ji her kêmasiya dûrî û bilindî.'"*

(T464 Tirmizî, Witr, 10)

# KELÎMA ŞEHADETÊ
## BINGEHA ÎSLAMÊ

**129.** (Ebdullah bin Umer) dibêje: "Bavê min 'Umer bin Xettab ji min re got: ...Resûlê Xwedê gotiye: *"Îslam ewe ku tu şehde bidî ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda nîn in û Muhemmed jî resûlê Xwedê ye, tu nimêj bikî, zekatê bidî, Rojiya Remezanê bigirî û heke bikaribî Kebeyê hec bikî."*

(M93 Muslim, Îman, 1)



**130.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îslam li sr pênc bingehan hatiye avakirin: Şehdedana ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda nîn in û Muhemmed jî resûlê Xwedê ye, nimêjkirin, zekatdayîn, heckirin û rojîgirtina Remezanê."*

(B8 Buxarî, Îman, 2)



**131.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî bêje: Ez şehde didim ku ji bilî Xwedê Ellah tu xweda nînin (şirîkê wî jî nînin), bêguman Muhemmed ebdê Wî û resûlê Wî ye û bêguman Îsa ebdê Xwedê ye û kurê ebda Xwedê ye û kelîma Wî ya (ku bi emrê xwe jê anî heyînê) gihandiyê ye û ruhek ji teref Xwedê ve (hatiye) ye û cennet heq e û cehneme heq e' wê Xwedê wî bixe cennetê de ji kîjan ji heşt deriyî bixaze."*

(M140 Muslim, Îman, 46)



١٣٢- حَدَّثَنَا أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَمُعَاذٌ رَدِيفُهُ عَلَى الرَّحْلِ قَالَ: "يَا مُعَاذُ بْنَ جَبَلٍ" قَالَ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ. قَالَ: "يَا مُعَاذُ! قَالَ: "لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ، ثَلاَثًا." قَالَ: "مَا مِنْ أَحَدٍ يَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ صِدْقًا مِنْ قَلْبِهِ إِلاَّ حَرَّمَهُ اللَّهُ عَلَى النَّارِ..."

# BAWERIYA BI XWEDÊ
## ARMANCA HEYÎNÊ

١٣٣- حَدَّثَنَا أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَمُعَاذٌ رَدِيفُهُ عَلَى الرَّحْلِ قَالَ: "يَا مُعَاذُ بْنَ جَبَلٍ" قَالَ: لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ. قَالَ: "يَا مُعَاذُ! قَالَ: "لَبَّيْكَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَسَعْدَيْكَ، ثَلاَثًا." قَالَ: "مَا مِنْ أَحَدٍ يَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ صِدْقًا مِنْ قَلْبِهِ إِلاَّ حَرَّمَهُ اللَّهُ عَلَى النَّارِ..."



١٣٤- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "ثَلاَثٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ وَجَدَ بِهِنَّ حَلاَوَةَ الْإِيمَانِ، مَنْ كَانَ اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَحَبَّ إِلَيْهِ مِمَّا سِوَاهُمَا، وَأَنْ يُحِبَّ الْمَرْءَ لاَ يُحِبُّهُ إِلاَّ لِلَّهِ، وَأَنْ يَكْرَهَ أَنْ يَعُودَ فِي الْكُفْرِ بَعْدَ أَنْ أَنْقَذَهُ اللَّهُ مِنْهُ، كَمَا يَكْرَهُ أَنْ يُقْذَفَ فِي النَّارِ."



**132.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Muaz li piş Pêxember (s.) li ser dewarekî siwar bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) gazî wî kir: *"Ey Muaz bin Cebel!"* Muaz, bersif da: *"Keremke ez li ber emrê te hazirim ya Resûlê Xwedê!"* Pêxember (s.) carek dî got: *"Ey Muaz!"* Muaz, bersiv da: *"Keremke ez li ber emrê te hazirim ya Resûlê Xwedê!"* Ev rewş sê cara dubare bû. Pêxember (s.) got: *"Çi kesê bi rastî ji dilê xwe şehde bide ku ji bilî Xwedê Ellah tu îlah tunehin û Muhemmed resûlê Xwedê ye, mitleqa wê Xwedê cehnemê jêre qedexe bike."*

(B128 Buxarî, Ilim, 49)

# BAWERIYA BI XWEDÊ
## ARMANCA HEYÎNÊ

**133.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Muaz li piş Pêxember (s.) li ser dewarekî siwar bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) gazî wî kir: *"Ey Muaz bin Cebel!"* Muaz, bersiv da: *"Keremke ez li ber emrê te hazirim ya Resûlê Xwedê!"* Pêxember (s.) carek dî got: *"Ey Muaz!"* Muaz, bersif da: *"Keremke ez li ber emrê te hazirim ya Resûlê Xwedê!"* Ev rewş sê cara dubare bû. Pêxember (s.) got: *"Çi kesê bi rastî ji dilê xwe şehde bide ku ji bilî Xwedê Ellah tu îlah tunehin û Muhemmed resûlê Xwedê ye, mitleqa wê Xwedê cehnemê jêre qedexe bike."*

(B128 Buxarî, Ilim, 49)



**134.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê van her sê sifetan di xwe de kom bikê bêguman wê tama şîraniya îmanê hiss bike: Ji herkesi zêdetir hez ji Xwedê û Resûlê Wî bike û wextê hez ji miroveki kir tenê jibo rizaya Xwedê hez jê bike û çawa naxazê bikeve êgir de piştî Xwedê jê xilaskirî hewqasî nexaze vegerê kufrê."*

(M165 Muslim, Îman, 67)



١٣٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ قَالَ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿فِى يَوْمٍ﴾ مِائَةَ مَرَّةٍ كَانَتْ لَهُ عَدْلَ عَشْرِ رِقَابٍ، وَكُتِبَتْ لَهُ مِائَةُ حَسَنَةٍ، وَمُحِيَتْ عَنْهُ مِائَةُ سَيِّئَةٍ، وَكَانَتْ لَهُ حِرْزًا مِنَ الشَّيْطَانِ يَوْمَهُ ذَلِكَ حَتَّى يُمْسِيَ، وَلَمْ يَأْتِ أَحَدٌ بِأَفْضَلَ مِمَّا جَاءَ إِلاَّ رَجُلٌ عَمِلَ أَكْثَرَ مِنْهُ."



١٣٦- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: أَقْبَلْنَا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْ غَزْوَةِ تَبُوكَ فَلَمَّا رَأَيْتُهُ خَلِيًّا قُلْتُ ﴿له﴾: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَخْبِرْنِي بِعَمَلٍ يُدْخِلُنِي الْجَنَّةَ. قَالَ: بَخٍ لَقَدْ سَأَلْتَ عَنْ عَظِيمٍ، وَهُوَ يَسِيرٌ عَلَى مَنْ يَسَّرَهُ اللَّهُ عَلَيْهِ، تُقِيمُ الصَّلاَةَ الْمَكْتُوبَةَ، وَتُؤَدِّي الزَّكَاةَ الْمَفْرُوضَةَ، وَتَلْقَى اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ لَا تُشْرِكُ بِهِ شَيْئًا..."



١٣٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الإِيمَانُ بِضْعٌ وَسَبْعُونَ شُعْبَةً، أَفْضَلُهَا لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ، وَأَوْضَعُهَا إِمَاطَةُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ، وَالْحَيَاءُ شُعْبَةٌ مِنَ الإِيمَانِ."

**135.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî (di rojekî de) sed carî bêje: 'La îlahe îllellah wehdehû la şerîke leh, lehu'l-mulku we lehu'l-hamdu we huwe 'ela kulli şey'in qedîr' (Ji bilî Xwedê Ellah tu xweda tunehin, ew tenê ye, tu şirîk jêre nînin, milk yê Wi ye, hemd jî ji Wî re ye. Ew qadirê (kirina) her tiştiye.)ji wî kesî re xêra azadkirina deh koleyan heye û jê re sed xêr jî tê nivîsandin û sed gunehên wî jî têne efukirin. (Ev dua) bo wê rojê pêşberê şerrê şeytan de jêre dibe sîper. Ji bilî kesê ji vê zêdetir (emelek) kirî tu kes ji emelê wî xêrtir emelek nekiriye."*

(B6403 Buxarî, De'ewat, 64)



**136.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye ragihandin got: "Em bi Resûlê Xwedê re ji Herba Tebûkê dizivirîn. Vêca dema min ew tenê dît, min jêre got: *'Ya Resûlê Xwedê! Emelekî ku min bibê cennetê ji min re bêje.'* Pêxember (s.) got: *'Aferî ji te re! Te pirsa tiştek gelek mezin kir, lê bi rastî ew ji wî kesê Xwedê jêre muyesser kirî re hêsan e. Tê nimêjên ferz bikî, zikata li ser te ferze tê bidî û bêyî tu şirîkek jêre çêkî liqayî Xwedê werî..."*

(HM22418 Ibn Hanbel, V, 237)



**137.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îman heftê kusûr derece ye. Dereca herî bilind kelîma tewhîdê 'La îlahe îllellah' e (Jibilî Xwedê Ellah tu xweda nînin). Ya herî kêmtir avêtina tiştên ku di rê de mirovan aciz dikin e. Heya jî şubeyek/dereceyek ji îmanê ye."*

(N5008 Nesaî, Iman we şera'ituh, 16; M153 Muslim, Iman, 58)

# TAETA XWEDÊ Û RESÛLÊ WÎ
## ELEQEYEK JI DIL Û CAN

١٣٨- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا تَشَهَّدَ قَالَ: "... مَنْ يُطِعِ اللَّهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ رَشَدَ، وَمَنْ يَعْصِهِمَا فَإِنَّهُ لاَ يَضُرُّ إِلاَّ نَفْسَهُ وَلاَ يَضُرُّ اللَّهَ شَيْئًا."



١٣٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ "... فَإِذَا نَهَيْتُكُمْ عَنْ شَيْءٍ فَاجْتَنِبُوهُ، وَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِأَمْرٍ فَأْتُوا مِنْهُ مَا اسْتَطَعْتُمْ."



١٤٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِي فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ، وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ عَصَى اللَّهَ..."



١٤١- رَافِعُ بْنُ خَدِيجٍ قَالَ: قَدِمَ نَبِيُّ ﷺ الْمَدِينَةَ، وَهُمْ يَأْبُرُونَ النَّخْلَ، يَقُولُون يُلَقِّحُونَ النَّخلَ، فَقَالَ: "مَا تَصْنَعُونَ؟" قَالُوا: كُنَّا نَصْنَعُهُ قَالَ: "لَعَلَّكُمْ لَوْ لَمْ تَفْعَلُوا كَانَ خَيْرًا." فَتَرَكُوهُ، فَنَفَضَتْ أَوْ فَنَقَصَتْ قَالَ: فَذَكَرُوا ذَلِكَ لَهُ فَقَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ، إِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ مِنْ دِينِكُمْ فَخُذُوا بِهِ، وَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ مِنْ رَأْيِي فَإِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ."



# TAETA XWEDÊ Û RESÛLÊ WÎ
## ELEQEYEK JI DIL Û CAN

**138.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di xutbeyên xwe de piştî teşehhudê wiha digot: "... *Çi kesê bi ya Xwedê û Resûlê Wî bike ewî rêya rast dîtiye. Çi kesê bêemriya wan bike ew tenê zererê dide xwe û tuwwî zererê nagihîne Xwedê.*"

(D1097 Ebû Dawûd, Salat, 221, 223)



**139.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Dema ez tiştekî ji were qedexe bikim xwe jê dûr bikin. Dema emrê we bi kirina tiştekî bikim li gor taqeta xwe ewî pêkbênin.*"

(B7288 Buxarî, I'tîsam, 2)



**140.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Kî bi ya min bike ewî bi ya Xwedê kiriye û kî bêemriya min bike ewî bêemriya Xwedê kiriye.*"

(M4749 Muslim, Imare, 33)



**141.** Rafi' bin Xedîc (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê hate Medînê û ehlê Medînê darê xurma fitrîm dikirin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "*Ma hûn çi dikin?*" Gotin: "Em ji berê de vê dikin." Pêxember (s.) got: "*Heke hûn vê nekin dibe ku baştir be.*" Li ser vêyekê ewan jî dev jê berdan. Piştî hingî xurmeyan hindik mehsûlat dan. Dema ev rewş jêre gotin Pêxember (s.) got: "*Bêgman ez beşer im, heke min emrê we bi tiştek ku dînê we eleqdar dike kir ewê bikin, heke min li gor fikr û ramana xwe emrê we bi tiştekî kir (zanibin) ku ez beşerim.*"

(M6127 Muslim, Feda'îl, 140)



١٤٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "كُلُّ أُمَّتِي يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ، إِلاَّ مَنْ أَبَى"، قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَمَنْ يَأْبَى؟ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِي دَخَلَ الْجَنَّةَ، وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ أَبَى."

# BAWERIYA BI MELAÎKETA
## DERDORGIRTINA BI REHMETÊ

١٤٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا بَارِزًا لِلنَّاسِ، فَأَتَاهُ رَجُلٌ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا الْإِيمَانُ؟ قَالَ: "أَنْ تُؤْمِنَ بِاللَّهِ وَمَلاَئِكَتِهِ وَكِتَابِهِ وَلِقَائِهِ وَرُسُلِهِ وَتُؤْمِنَ بِالْبَعْثِ الآخِرِ..." فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "هَذَا جِبْرِيلُ، جَاءَ لِيُعَلِّمَ النَّاسَ دِينَهُمْ."



١٤٤- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خُلِقَتِ الْمَلاَئِكَةُ مِنْ نُورٍ، وَخُلِقَ الْجَانُّ مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ، وَخُلِقَ آدَمُ مِمَّا وُصِفَ لَكُمْ."



١٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَوْ عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلَّهِ مَلاَئِكَةً سَيَّاحِينَ فِي الْأَرْضِ فَضْلاً عَنْ كُتَّابِ النَّاسِ فَإِذَا وَجَدُوا أَقْوَامًا يَذْكُرُونَ اللَّهَ تَنَادَوْا هَلُمُّوا إِلَى بُغْيَتِكُمْ فَيَجِيئُونَ فَيَحُفُّونَ بِهِمْ إِلَى سَمَاءِ الدُّنْيَا فَيَقُولُ اللَّهُ: عَلَى أَيِّ شَيْءٍ تَرَكْتُمْ عِبَادِي يَصْنَعُونَ؟ فَيَقُولُونَ: تَرَكْنَاهُمْ يَحْمَدُونَكَ وَيُمَجِّدُونَكَ وَيَذْكُرُونَكَ..."



**142.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bilî kesê nexwaze ummeta min tev wê biçin cennetê."* Gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma kî naxaze?" Resûle Xwedê bersiv da: *"Kesê bi ya min bike wê biçe cennetê û kesê bêemriya min bike ewî nexwestiye."*

(B7280 Buxarî, I'tîsam, 2)

# BAWERIYA BI MELAÎKETA
## DERDORGIRTINA BI REHMETÊ

**143.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku rojekî Resûlê Xwedê (s.) di nav millet de rûniştî bû. Vêca zilamek hate cemê û got: *"Ya Resûlê Xwedê! "Îman çiye?"* Pêxember (s.) got: *"Bawerkirina te bi Xwedê û bi melaîketê Wî û bi kitêbên Wî û gihaştina bal Wî û bi Pêxemberên Wî ye. (Digel van) baweriya bi vejîna dawî ya piştî mirinê ye"...*(Piştî ew zilamê pirs pirsî bû veqetiya) Resûlê Xwedê got: *"Ew (zilam) Cibrîl bû hat deqene dînê mirovan bi wan bide hînkirin."* (

M97 Muslim, Iman, 5)



**144.** Ji Aîşe hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê wiha gotiye: *"Melaîket ji nûrê hatine afirandin, cin ji guriya agir hatine afirandin û Adem ji wê tişta ku (di Qur'anê de) ji were hatî şîrovekirin (ji axê) hatiye afirandin."*

(M7495 Muslim, Zuhd ve reqa'îq, 60)



**145.** Ji Ebû Hureyre yan ji Ebû Seîd el-Xudrî hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê wiha gotiye: *"Ji bilî melaîketên ku emelê însanan dinivîsin li ser rûyê erdê melaîketinên Xwedê yê digerihin hene. Dema ew liqayî komek mirovên ku zikrê Xwedê dikin bihatana gazî yekûdû dikirin û digotin: 'Werin vaya tişta hûn lê digerin li vir e'. Cêhde dihatin wir û heta asîmanê dinyayê derdora wan digirtin. Vêca Xwedê ji wan melaîketan dipirse: 'Ma we ebdên min li ser çi halî hiştin çi dikirin?' Ew jî dibêjin: 'Me ew hiştin hemdê te dikirin, tazîma te dikirin û zikrê te dikirin'..."*

(T3600 Tirmizî, De'ewat, 129)



١٤٦- عَنْ عَلِيٍّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ أَتَى أَخَاهُ الْمُسْلِمَ عَائِدًا، مَشَى فِى خِرَافَةِ الْجَنَّةِ حَتَّى يَجْلِسَ. فَإِذَا جَلَسَ غَمَرَتْهُ الرَّحْمَةُ. فَإِنْ كَانَ غُدْوَةً صَلَّى عَلَيْهِ سَبْعُونَ أَلْفَ مَلَكٍ حَتَّى يُمْسِيَ. وَإِنْ كَانَ مَسَاءً صَلَّى عَلَيْهِ سَبْعُونَ أَلْفَ مَلَكٍ حَتَّى يُصْبِحَ."



١٤٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلَّهِ مَلَائِكَةً سَيَّاحِينَ فِى الْأَرْضِ يُبَلِّغُونِى مِنْ أُمَّتِى السَّلَامَ."

# BAWERIYA BI KITÊBA
## HEVDÎTINA EQL Û WEHYÊ

١٤٨- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...وَفَضْلُ كَلَامِ اللَّهِ عَلَى سَائِرِ الْكَلَامِ كَفَضْلِ اللَّهِ عَلَى خَلْقِهِ."



١٤٩- عَنْ أَبِي ذَرٍّ، قَالَ... قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، كَمْ كِتَابًا أَنْزَلَهُ اللَّهُ ؟ قَالَ: "مِئَةُ كِتَابٍ، وَأَرْبَعَةُ كُتُبٍ، أُنْزِلَ عَلَى شِيثَ خَمْسُونَ صَحِيفَةً، وَأُنْزِلَ عَلَى أَخْنُوخَ ثَلَاثُونَ صَحِيفَةً، وَأُنزِلَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ عَشْرُ صَحَائِفَ، وَأُنزِلَ عَلَى مُوسَى قَبْلَ التَّوْرَاةِ عَشْرُ صَحَائِفَ، وَأُنْزِلَ التَّوْرَاةُ، وَالإِنْجِيلُ، وَالزَّبُورُ، وَالْقُرْآنُ..."



**146.** Hz. Elî (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: *'Çi kesê here ziyareta birayê xwe yê misilmanê nexweş, heta ku li cem wî rûnê, weke ku di nav fêkiyên cennetê de meşiyabe. Dema rûnişt rehmet derdora wî digire. Heke ziyareta wî dema sibehê de be heftê hezar melaîket jêre dua û îstixfar dikin heta bibe êvar. Heke êvar be heftê hezar melaîket jêre dua û îstixfar dikin heta bibe sibeh."*

(ÎM1442 Ibn Maceh, Cena'îz, 2)



**147.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Li ser rûyê erdê melaîketinên Xwedê yê digerihin hene, selamê ummeta min digihînine min."*

(N1283 Nesa'î, Sehîw, 46)

# BAWERIYA BI KITÊBA
## HEVDÎTINA EQL Û WEHYÊ

**148.** Ji Ebû Seîd hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Dereca kelamê Xwedê li ser kelamên dîtir weke dereca Xwedê li ser mexlûqatên xwe ye"*

(T2926 Tirmizî, Feda'îlu'l-Qur'an, 25)



**149.** Ebû Zer (r.) dibêje...: Min got: "Ey Resûlê Xwedê! Ma Xwedê çend kitêb nazilkirine?" Pêxember (s.) got: *"Sed û çar. Ji van pêncî ji Şîs re, sih ji Exnûx/Îdrîs re, deh ji Îbrahîm re û beriya Tewratê deh ji Mûsa re nazil bûne. Digel van Tewrat, Încîl, Zebûr û Qur'an nazil bûne..."*

(Sİ361 Ibn Hibban, Sahîh, II, 276)



١٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ أَهْلُ الْكِتَابِ يَقْرَءُونَ التَّوْرَاةَ بِالْعِبْرَانِيَّةِ، وَيُفَسِّرُونَهَا بِالْعَرَبِيَّةِ لِأَهْلِ الْإِسْلاَمِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تُصَدِّقُوا أَهْلَ الْكِتَابِ وَلاَ تُكَذِّبُوهُمْ، وَقُولُوا: ﴿آمَنَّا بِالَّذي أُنْزِلَ اِلَيْنَا وَأُنْزِلَ اِلَيْكُمْ﴾ الآيَةَ.



١٥١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ! لاَ يَسْمَعُ بِى أَحَدٌ مِنْ هَذِهِ الْأُمَّةِ يَهُودِيٌّ وَلاَ نَصْرَانِيٌّ، ثُمَّ يَمُوتُ وَلَمْ يُؤْمِنْ بِالَّذِى أُرْسِلْتُ بِهِ إِلاَّ كَانَ مِنْ أَصْحَابِ النَّارِ."

# KITÊBA XWEDÊ
## KELAMÊ HERÎ XWEŞ

١٥٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ فِى خُطْبَتِهِ... "إِنَّ أَصْدَقَ الْحَدِيثِ كِتَابُ اللَّهِ وَأَحْسَنَ الْهَدْيِ هَدْيُ مُحَمَّدٍ..."



١٥٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنَ الْأَنْبِيَاءِ نَبِيٌّ إِلاَّ أُعْطِيَ مِنَ الآيَاتِ مَا مِثْلُهُ أُومِنَ – أَوْ آمَنَ – عَلَيْهِ الْبَشَرُ، وَإِنَّمَا كَانَ الَّذِى أُوتِيتُ وَحْيًا أَوْحَاهُ اللَّهُ إِلَيَّ، فَأَرْجُو أَنِّى أَكْثَرُهُمْ تَابِعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



**150.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Ehlê kitêba (Cihûyan) Tewrat bi Îbranî dixwendin û bi Erebî ji Misilmanan re şîrove dikirin. Li ser vêyekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ne tesdîqa Ehlê kitêbê (Cihûyan) bikin ne jî tekzîba wan bikin. (Belê) bêjin: 'Me bawerî bi ya ji mere û bi ya ji were nazil bûyî aniye* (EAnkebût, 29/46)*.'"*

( B7362 Buxarî, I'tîsam, 25)



**151.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Ez sond dixwim bi Wî kesê ku rihê Muhemmed di destê wîde ye! Ji vê ummetê çi Cihû an Filehê xebera wî ji min heyî û bêyî ku baweriyê bi wehya nazilî ser min bûyî bîne, bimire mitleqa wê bibe ji wariyên cehnemê."*

(M386 Muslim, Îman, 240)

# KITÊBA XWEDÊ
## KELAMÊ HERÎ XWEŞ

**152.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di xutba xwe de wiha digot: *"... Rasttirînê gotinan, gotina kitêba Xwedê ye; hal û hereketê herî xweş hal û hereketê Muhemmed'in..."*

(N1579 Nesa'î, Salatu'l-'îdeyn, 22)



**153.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Tu pêxember nînin ku ji bo mirov baweriyê pê bînin (Xwedê) mucize nedabinê. Mucîza (Xwedê) daye min wehy e. Vêca ez hêvî dikim ku Roja Qiyametê di nav pêxemberan de, yê ummeta wî zêdetir ez bim."* (

B7274 Buxarî, I'tîsam, 1)



١٥٤- عَنْ عَائِشَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ الَّذِى يَقْرَأُ الْقُرْآنَ وَهُوَ حَافِظٌ لَهُ مَعَ السَّفَرَةِ الْكِرَامِ، وَمَثَلُ الَّذِى يَقْرَأُ الْقُرْآنَ وَهُوَ يَتَعَاهَدُهُ وَهُوَ عَلَيْهِ شَدِيدٌ فَلَهُ أَجْرَانِ."



١٥٥- عَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "خَيْرُكُمْ مَنْ تَعَلَّمَ الْقُرْآنَ وَعَلَّمَهُ."



١٥٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "تَعَلَّمُوا الْقُرْآنَ، فَاقْرَءُوهُ وَأَقْرِئُوهُ فَإِنَّ مَثَلَ الْقُرْآنِ لِمَنْ تَعَلَّمَهُ فَقَرَأَهُ وَقَامَ بِهِ كَمَثَلِ جِرَابٍ مَحْشُوٍّ مِسْكًا يَفُوحُ بِرِيحِهِ كُلُّ مَكَانٍ، وَمَثَلُ مَنْ تَعَلَّمَهُ فَيَرْقُدُ وَهُوَ فِى جَوْفِهِ كَمَثَلِ جِرَابٍ وُكِئَ عَلَى مِسْكٍ."

# BAWERIYA BI PÊXEMBERAN
## TESDÎQKIRINA QASIDÊN XWEDÊ

١٥٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا بَارِزًا لِلنَّاسِ، فَأَتَاهُ رَجُلٌ، فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا الْإِيمَانُ؟ قَالَ؟ "أَنْ تُؤْمِنَ بِاللَّهِ وَمَلاَئِكَتِهِ وَكِتَابِهِ وَلِقَائِهِ وَرُسُلِهِ وَتُؤْمِنَ بِالْبَعْثِ الْآخِرِ..." فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "هَذَا جِبْرِيلُ، جَاءَ لِيُعَلِّمَ النَّاسَ دِينَهُمْ."



**154.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Kesê Qur'anê jiberbike/pê emel bike û bixwêne ewê digel melaîketên bijare be. Kesê bi zehmetî jî be Qur'an xwendin ji xwere kiribe edet jêre du xêr hene."*

(B4937 Buxarî, Tefsîr, ('Ebese) 1)



**155.** Ji Osman bin 'Effan (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenctirê hewe ew kes e ku hînê Qur'anê dibe û wê dide hînkirin.."*

(T2907 Tirmizî, Feda'îlu'l-Qur'an, 15)



**156.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe bielimênin Qur'anê, wê bixwînin û bidine xwendin. Kesê hînê xwendina Qur'anê bibe, wê bixwîne û pê emel bike ew weke wê firaxa ku tije misk e, vêca bêhna wê belavê her derî dibe ye. Kesê hînê Qur'anê buyî (Digel vê nexwîne û nede xwendin) xwe dirêj kirî û razayî weke wê firaxa tije miska devgirêdayî ye."*

(T2876 Tirmizî, Feda'îlu'l-Qur'an, 2)

# BAWERIYA BI PÊXEMBERAN
## TESDÎQKIRINA QASIDÊN XWEDÊ

**157.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku rojekî Resûlê Xwedê (s.) di nav millet de rûniştî bû. Vêca zilamek hate cemê û got: *"Ya Resûlê Xwedê! "Îman çiye?"* Pêxember (s.) got: *"Bawerkirina te bi Xwedê û bi melaîketê Wî û bi kitêbên Wî û gihaştina bal Wî û bi Pêxemberên Wî ye. (Digel van) baweriya bi vejîna dawî ya piştî mirinê ye"*...(Piştî ew zilamê pirs pirsî bû veqetiya) Resûlê Xwedê got: *"Ew (zilam) Cibrîl bû hat deqene dînê mirovan bi wan bide hînkirin."*

(M97 Muslim, Îman, 5; B50 Buxarî, Îman, 37)



١٥٨- عَنْ رَبَاحِ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ حُوَيْطِبٍ عَنْ جَدَّتِهِ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "... وَ لَا يُؤْمِنُ بِاللَّهِ مَنْ لَمْ يُؤْمِنْ بِي..."



١٥٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ سُئِلَ أَيُّ الْأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "الْإِيمَانُ بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ."



١٦٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا أَوْلَى النَّاسِ بِعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ فِى الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَالأَنْبِيَاءُ إِخْوَةٌ لِعَلاَّتٍ، أُمَّهَاتُهُمْ شَتَّى، وَدِينُهُمْ وَاحِدٌ."



١٦١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنَ الْأَنْبِيَاءِ نَبِيٌّ إِلَّا أُعْطِيَ مِنَ الْآيَاتِ مَا مِثْلُهُ أُومِنَ -أَوْ آمَنَ- عَلَيْهِ الْبَشَرُ، وَإِنَّمَا كَانَ الَّذِي أُوتِيتُ وَحْيًا أَوْحَاهُ اللَّهُ إِلَيَّ، فَأَرْجُو أَنِّي أَكْثَرُهُمْ تَابِعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٦٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "طُوبَى لِمَنْ آمَنَ بِي وَرَآنِي مَرَّةً وَطُوبَى لِمَنْ آمَنَ بِي وَلَمْ يَرَنِي سَبْعَ مِرَارٍ."

**158.** Rebah bin Ebdurrahman bin Huweytıb ji dapîra xwe ragihandiye ku gotiye: Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: "... *Kesê bawerî bi min neanîbe, ew baweriyê bi Xwedê nayne.*"

(HM27687 Ibn Hanbel, VI, 382)



**159.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: "Çi emel bi qîmettir e?" Ewî got: "*Baweriya bi Xwedê û bi Resûlê Wî ye.*"

(N4988 Nesâî, Îmân, 1)



**160.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Di dinyayê de û di axîretê de ji nav însanan kesê nêzîktirînê Îsa kurê Meryemê ezim. Pêxember birayên hev yên bavê wan yek û dayîka wan cuda ne. Dînê wan jî yek e.*"

(B3443 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)



**161.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: "*Tu pêxember nînin ku ji bo mirov baweriyê pê bînin (Xwedê) mucize nedabinê. Mucîza (Xwedê) dayî min wehya dayî min e. Vêca ez hêvî dikim ku Roja Qiyametê di nav pêxemberan de yê ummeta wî zêdetir ez bim.*"

(B7274 Buxarî, I'tîsam, 1)



**162.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: "*Xweşî ji wî kesê ez dîtîm û bawerî bi min anî re be! Û heft xweşi ji wî kesê ez nedîtî bawerî bi min anî re be!*"

(HM12606 Ibn Hanbel, III, 155)

# MUCÎZE
## JI PÊXEMBERAN RE LUTFEK AWARTE

١٦٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ الْأَنْبِيَاءِ نَبِيٌّ إِلَّا أُعْطِيَ مِنْ الْآيَاتِ مَا مِثْلُهُ أُومِنَ –أَوْ آمَنَ– عَلَيْهِ الْبَشَرُ، وَإِنَّمَا كَانَ الَّذِي أُوتِيتُ وَحْيًا أَوْحَاهُ اللَّهُ إِلَيَّ، فَأَرْجُو أَنِّي أَكْثَرُهُمْ تَابِعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٦٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: قَالَ: أَتَتْ قُرَيْشٌ الْيَهُودَ، فَقَالُوا: بِمَ جَاءَكُمْ مُوسَى ؟ قَالُوا: عَصَاهُ وَيَدُهُ بَيْضَاءَ لِلنَّاظِرِينَ، وَأَتَوُا النَّصَارَى فَقَالُوا: كَيْفَ كَانَ عِيسَى ؟ قَالُوا: كَانَ يُبْرِئُ الْأَكْمَهَ وَالْأَبْرَصَ وَيُحْيِي الْمَوْتَى، وَأَتَوُا النَّبِيَّ ﷺ فَقَالُوا: ادْعُ لَنَا رَبَّكَ يَجْعَلْ لَنَا الصَّفَا ذَهَبًا، فَدَعَا رَبَّهُ، فَنَزَلَتْ هَذِهِ الْآيَةُ: ﴿إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ لَآيَاتٍ لِأُولِي الْأَلْبَابِ﴾" [آل عمران آية 190] الْآيَةَ، فَلْيَتَفَكَّرُوا فِيهَا.



١٦٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ ﴿بْنِ مَسْعُودٍ﴾ قَالَ: اِنْشَقَّ الْقَمَرُ عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِلْقَتَيْنِ، فَسَتَرَ الْجَبَلُ فِلْقَةً، وَكَانَتْ فِلْقَةٌ فَوْقَ الْجَبَلِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "اللَّهُمَّ اشْهَدْ."

# MUCÎZE
## JI PÊXEMBERAN RE LUTFEK AWARTE

**163.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Tu pêxember nînin ku ji bo mirov baweriyê pê bînin (Xwedê) mucîze nedabinê. Mucîza (Xwedê) dayî min wehya dayî min e. Vêca ez hêvî dikim ku Roja Qiyametê di nav pêxemberan de yê ummeta wî zêdetir ez bim."*

(B7274 Buxarî, I'tîsam, 1)



**164.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Qureyşî çûne cem Cihûyan û ji wan pirsîn: "Ma Mûsa çi (mucîze) ji were anîbû?" Gotin: "Esayê xwe û destê wî yê zêdesipî dihate dîtin." Piştre çûne cem Filehan û ji wan pirsîn: "Ma mucîzeyên Îsa çibûn?" gotin: "Kesên kor û yên sedefuyî tedawî dikirin (baş dibûn) û mirî sax dikirin." Vêca çûne cem Pêxember (s.) û jêre gotin: "Dua bike bila rebbê te Girê Sefayê ji mere bixe zêr." Vêca dema Resûlê Xwedê (s.) dua kir, ev ayet nazil bû: "*Bêguman di çêkirina erd û asîmanan de û di peyheviya roj û şevê de ji xudaneqlan re ayet/ibret hene.*" (Al-i 'Imran, 3/190) Êdî ji wan re hate gotin: "Di nava van mijaran de bifikirin."

(MK12322 Taberanî, el-Mu'cemu'l-kebîr, XII, 10)



**165.** Ebdullah (bin Mesûd) (r.) dibêje: "Di dewra Resûlê Xwedê (s.) de heyv bû du qet. Çiyê qetek nuxumand (nedihate dîtin) û qeta dîtir li ser çiyê bû (dihate dîtin). Li ser vêyekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ya Rebbî şahid be."*

(M7073 Muslim, Sıfatu'l-munafiqîn we ehkamuhum, 45)

# BAWERIYA BI AXÎRETÊ
## TESDÎQKIRINA HEYATA EBEDÎ

١٦٦- عَنِ ابْنِ عُمَر أَنَّ جِبْرِيلَ عَلَيْهِ السَّلَامُ قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ: مَا الْإِيمَانُ؟ قَالَ: "أَنْ تُؤْمِنَ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ وَبِالْقَدَرِ خَيْرِهِ وَشَرِّهِ..."



١٦٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلاَ يُؤْذِ جَارَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ."



١٦٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَتُؤَدَّنَّ الْحُقُوقُ إِلَى أَهْلِهَا يَوْمَ الْقِيَامَةِ حَتَّى يُقَادَ لِلشَّاةِ الْجَلْحَاءِ مِنَ الشَّاةِ الْقَرْنَاءِ."



١٦٩- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْكَيِّسُ مَنْ دَانَ نَفْسَهُ وَعَمِلَ لِمَا بَعْدَ الْمَوْتِ، وَالْعَاجِزُ مَنْ أَتْبَعَ نَفْسَهُ هَوَاهَا وَتَمَنَّى عَلَى اللَّهِ."



# BAWERIYA BI AXÎRETÊ
## TESDÎQKIRINA HEYATA EBEDÎ

**166.** Ibn Umer dibêje: Cibrîl eleyhisselam ji Pêxember (s.) pirsî: "Ma îman çi ye?" Pêxember (s.) got: *"Ewe tu baweriyê bi Xwedê/Ellah û bi melaîketên Wî û bi kitêbê Wî û bi pêxemberên Wî û bi Roja Qiyametê û çi xêr be çi şer be bi qederê bînî..."*

(HM191 Ibn Hanbel, I, 28; B50 Buxarî, Îman, 37)



**167.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe, bila îkrama mêhvanê xwe bike. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila cîranê xwe aciz neke. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila an (tiştê) xêrê bêje an jî bila neştexilê."*

(D5154 Ebû Dawûd, Edeb, 122, 123)



**168.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman wê roja Qiyametê heq tevde werine dayîn (bigihine xwedanê xwe) heta wê heqê pezâ bêsitirh ji ya bisitirh were sitandin."*

(T2420 Tirmizî, Sıfatu'l-qıyame, 2)



**169.** Ji Şeddad bin Ews (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Aqilmend ew kese ku muhaseba nefsa xwe dike û ji bo piştî mirinê emel dike. Kesê aciz jî ew e ku pey hewa nefsa xwe diçe û (serde jî) hêviya efukirinê ji Xwedê dixwazê."*

(T2459 Tirmizî, Sıfatu'l-qıyame, 25)



١٧٠- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ، قَالَ: حَدَّثَنِي عُمَرُ ﷺ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ مَاتَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ، قِيلَ لَهُ: ادْخُلِ الْجَنَّةَ مِنْ أَيِّ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ الثَّمَانِيَةِ شِئْتَ."

# QEDER
## HER TIŞT LI GOR PÎVANEKÎ HATIYE AFIRANDIN

١٧١- حَدَّثَنِي أَبِي عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ قَالَ: بَيْنَمَا نَحْنُ عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ يَوْمٍ إِذْ طَلَعَ عَلَيْنَا رَجُلٌ شَدِيدُ بَيَاضِ الثِّيَابِ شَدِيدُ سَوَادِ الشَّعَرِ لاَ يُرَى عَلَيْهِ أَثَرُ السَّفَرِ وَلاَ يَعْرِفُهُ مِنَّا أَحَدٌ حَتَّى جَلَسَ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَأَسْنَدَ رُكْبَتَيْهِ إِلَى رُكْبَتَيْهِ وَوَضَعَ كَفَّيْهِ عَلَى فَخِذَيْهِ... قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ الإِيمَانِ. قَالَ: "أَنْ تُؤْمِنَ بِاللَّهِ وَمَلاَئِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ وَتُؤْمِنَ بِالْقَدَرِ خَيْرِهِ وَشَرِّهِ."



١٧٢- عَنْ طَاوُسٍ، أَنَّهُ قَالَ: ...وَسَمِعْتُ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عُمَرَ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "كُلُّ شَيْءٍ بِقَدَرٍ..."



١٧٣- عَنْ عَلِيٍّ ﷺ ...ثُمَّ قَالَ: "مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ، مَا مِنْ نَفْسٍ مَنْفُوسَةٍ إِلاَّ كُتِبَ مَكَانُهَا مِنَ الْجَنَّةِ وَالنَّارِ، وَإِلاَّ قَدْ كُتِبَ شَقِيَّةً أَوْ سَعِيدَةً..."



**170.** 'Uqbe bin 'Amir (r.) dibêje: "Umer (r.) ji min re got: 'Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: *'Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anî û bimire wê jêre were gotin: 'Ji heşt deriyên cennetê di kîjanî re bixazî bikeve cennetê.'"*

(HM97 Ibn Hanbel, I, 17)

# QEDER
## HER TIŞT LI GOR PÎVANEKÎ HATIYE AFIRANDIN

**171.** (Ebdullah bin Umer dibêje): Bavê min Umer bin el-Xettab got: "Demekî em li cem Resûlê Xwedê (s.) rûniştîbun. Ji nişka ve zilamek cilên wî zêde sipî û pora wî zêde reş û tu elametê seferê li ser nexuyayî û kesek ji me ew nedinasî ser me de hat. Hat li cem Resûlê Xwedê rûnişt çokên xwe bi çokên wî ve kir û destên xwe danîn ser ranê xwe... û got: "Ma îman çi ye?" Pêxember (s.) got: *"Bawerîanîna te ya bi Xwedê/Ellah û bi melaîketê Wî û bi kitêbên Wî û bi pêxemberên Wî û bi Roja Qiyametê û çi xêr be çi şer be bi qederê ye..."*

(M93 Muslim, Îman, 1)



**172.** Ji Tawûs (r.) hatiye ragihandin ku gotiye:... "Min ji Ebdullah bin Umer bihîst digot: 'Resûlê Xwedê gotiye: *"Her tişt li gor qederê ye (pîvan û pîlanek).'"*

(M6751 Muslim, Qeder, 18; MU1629 Muwetta', Qeder, 1)



**173.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu kes ji we û tu kes ji zindeyan nîne ku cihê wî yê di cennetê de an di cehnemê de û seîde (xweşhal) an şeqiye (bêbext) ne nivisîbe."*

(B1362 Buxarî, Cena'iz, 82; M6731 Muslim, Qeder, 6)



١٧٤- ...فَقَالَ عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يُسْأَلُ عَنْهَا فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى خَلَقَ آدَمَ ثُمَّ مَسَحَ ظَهْرَهُ بِيَمِينِهِ فَاسْتَخْرَجَ مِنْهُ ذُرِّيَّةً فَقَالَ: خَلَقْتُ هَؤُلَاءِ لِلْجَنَّةِ وَبِعَمَلِ أَهْلِ الْجَنَّةِ يَعْمَلُونَ ثُمَّ مَسَحَ ظَهْرَهُ فَاسْتَخْرَجَ مِنْهُ ذُرِّيَّةً فَقَالَ: خَلَقْتُ هَؤُلَاءِ لِلنَّارِ وَبِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ يَعْمَلُونَ." فَقَالَ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! فَفِيمَ الْعَمَلُ؟ قَالَ: فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ إِذَا خَلَقَ الْعَبْدَ لِلْجَنَّةِ اسْتَعْمَلَهُ بِعَمَلِ أَهْلِ الْجَنَّةِ حَتَّى يَمُوتَ عَلَى عَمَلٍ مِنْ أَعْمَالِ أَهْلِ الْجَنَّةِ، فَيُدْخِلَهُ بِهِ الْجَنَّةَ، وَإِذَا خَلَقَ الْعَبْدَ لِلنَّارِ اسْتَعْمَلَهُ بِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ حَتَّى يَمُوتَ عَلَى عَمَلٍ مِنْ أَعْمَالِ أَهْلِ النَّارِ، فَيُدْخِلَهُ بِهِ النَّارَ."



١٧٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ، أَنَّهُ حَدَّثَهُ، أَنَّهُ رَكِبَ خَلْفَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا غُلَامُ إِنِّي مُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ: احْفَظْ اللَّهَ يَحْفَظْكَ، احْفَظِ اللَّهَ تَجِدْهُ تُجَاهَكَ، وَإِذَا سَأَلْتَ فَلْتَسْأَلْ اللَّهَ، وَإِذَا اسْتَعَنْتَ فَاسْتَعِنْ بِاللَّهِ، وَاعْلَمْ أَنَّ الْأُمَّةَ لَوْ اجْتَمَعُوا عَلَى أَنْ يَنْفَعُوكَ لَمْ يَنْفَعُوكَ، إِلَّا بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ لَكَ، وَلَوْ اجْتَمَعُوا عَلَى أَنْ يَضُرُّوكَ لَمْ يَضُرُّوكَ، إِلَّا بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللَّهُ عَلَيْكَ، رُفِعَتِ الْأَقْلَامُ، وَجَفَّتْ الصُّحُفُ."



١٧٦- عَنْ أَبِي خُزَامَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَرَأَيْتَ رُقًى نَسْتَرْقِيهَا وَدَوَاءً نَتَدَاوَى بِهِ وَتُقَاةً نَتَّقِيهَا، هَلْ تَرُدُّ مِنْ قَدَرِ اللَّهِ شَيْئًا؟ قَالَ: "هِيَ مِنْ قَدَرِ اللَّهِ."

**174.** Dema ji Umer bin el-Xettab me'na vê ayetê hate pirsîn: *"Kanê Rebbê te (ji ezel ve) zurriyeta zarokên Adem ji pişta wan derxistibû û ew ji xwe re kiribûne şahid û gotibû: 'Ma ez ne Rebbê we me?' ewan jî gotibûn: 'Belê em şahid in (ku tu Rebbê meyî).' Ev, bo ku Roja Qiyametê hûn nebêjin: 'Xebera me ji vê tune bû.' "* (E'râf, 7/172) Umer (r.) wiha bersiv da: Ev ayet ji Resûlê Xwedê jî hatibû pirsîn. Ewî ev cewab dabû: *"Xwedê Tebareke we Teala Adem çêkir piştre destê (qudreta) xwe ser pişta wî re bir û anî û jê nifşek derêxist û got: 'Min ev ji bo cennetê çêkirin û wê emelê ehlê cennetê bikin.' Piştre carek dî destê xwe ser pişta Adem re bir û anî û nifşek dîtir jê derêxist û got: 'Min ev ji bo cehnemê çêkirin û wê emelê ehlê cehnemê bikin."* Vêca zilamekî got: "Ya Resûlê Xwedê! Wî çaxî emel ji çire ye?" Resûlê Xwedê wiha bersiv da: *"Dema Xwedê ebdê xwe ji bo cennetê afirandibe heta ku li ser emelê ehlê cennetê bimire emelê ehlê cennetê pê dide kirin û wî dibe cennetê. Dema Xwedê ebdê xwe ji bo cehnemê afirandibe heta ku li ser emelê ehlê cehnemê bimire emelê ehlê cehnemê pê dide kirin û wî dibe cehnemê."*

(MU1627 Muwetta', Qeder, 1)



**175.** Ji Ibn Ebbas hatiye riwayetkirin ku gotiye: Rojekî ez li piş Pêxember (s.) suwar bûm (em diçûn). Pêxember (s.) gote min: *"Xorto! Ezê te hînê çend gotina bikim: Tu heqqê Xwedê biparêze ewê jî te parêzê, heqqê Xwedê biparêze tuyê Wî her li cem xwe bibînî. Wextê te xwest ji Xwedê bixwaze. Ku te alîkarî xwest ji Xwedê alîkariyê bixaze. Zanibe ku civak hemû ji bo ku feydeyekî bigihîne te li hev kom bibin ji bilî miqdarê Xwedê ji tere teqdîr kirî nikarin feydeyek dîtir bigihînine te. Heke ku civak hemû ji bo ku zererekî bigihîne te li hev kom bibin ji bilî miqdarê Xwedê teqdîr kirî nikarin zererek dîtir bigihînine te. Di vê xusûsê de qelem rabûye û rûpel zuwa bûne (qerar hatiye dayîn)"*

(HM2669 Ibn Hanbel, I, 293; T2516 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 59)



**176.** Ebû Huzame (r.) ji bavê xwe riwayet kiriye ku gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ka tu çawa dibîne! Gelo ma ev duayên em bi niyeta şifayê dixwînin, ev dermanê em pê xwe derman dikin û tedbîrên ji bo parastinê em distînin ji qedera Xwedê tiştekê diguherîne?" Pêxember (s.) got: *"Ew jî ji qedera Xwedê ne.'"*

(T2065 Tirmizî, Tib, 21)

# MUMIN
## ÎNSANÊ QENC, BAWERMEND Û LÊEWLE

١٧٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَخْبِرُونِى بِشَجَرَةٍ مَثَلُهَا مَثَلُ الْمُسْلِمِ، تُؤْتِى أُكُلَهَا كُلَّ حِينٍ بِإِذْنِ رَبِّهَا، وَلاَ تَحُتُّ وَرَقَهَا"، فَوَقَعَ فِى نَفْسِى أَنَّهَا النَّخْلَةُ فَكَرِهْتُ أَنْ أَتَكَلَّمَ وَثَمَّ أَبُو بَكْرٍ وَعُمَرُ، فَلَمَّا لَمْ يَتَكَلَّمَا قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "هِيَ النَّخْلَةُ."



١٧٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِ كَمَثَلِ الْعَطَّارِ، إِنْ جَالَسْتَهُ نَفَعَكَ، وَإِنْ مَاشَيْتَهُ نَفَعَكَ، وَإِنْ شَارَكْتَهُ نَفَعَكَ."



١٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ الْمُؤْمِنِ كَمَثَلِ خَامَةِ الزَّرْعِ يَفِيءُ وَرَقُهُ، مِنْ حَيْثُ أَتَتْهَا الرِّيحُ تُكَفِّئُهَا، فَإِذَا سَكَنَتِ اعْتَدَلَتْ، وَكَذَلِكَ الْمُؤْمِنُ يُكَفَّأُ بِالْبَلاَءِ، وَمَثَلُ الْكَافِرِ كَمَثَلِ الأَرْزَةِ صَمَّاءَ مُعْتَدِلَةً حَتَّى يَقْصِمَهَا اللَّهُ إِذَا شَاءَ."



١٨٠- حَدَّثَنِي عَبْدُ اللَّهِ بْنُ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ، إِنَّ مَثَلَ الْمُؤْمِنِ لَكَمَثَلِ الْقِطْعَةِ مِنَ الذَّهَبِ نَفَخَ عَلَيْهَا صَاحِبُهَا فَلَمْ تَغَيَّرْ وَلَمْ تَنْقُصْ..."



# MUMIN
## ÎNSANÊ QENC, BAWERMEND Û LÊEWLE

**177.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) (ji komeke ez jî di nav de re) got: *"Ji min re dareka dişibihê Misilmanî bêjin ku bi izna Xwedê her dem fêkiyê xwe dide û pelên wê jî tucara nawerihin."* Min di dilê xwe de derbaskir ku ez bejim: "Ew dara xurmê ye." Lêbelê li wê derê Ebû Bekir û Umer hebûn min nexwest ez biştexilim. Dema ew jî neştexilîn Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ew dara xurmê ye."*

(B6144 Buxarî, Edeb, 89)



**178.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin weke miskfiroş e. Tu li cemê rûnê wê feydê bide te, tu pêre rêve here wê feydê bide te û tu şirîkatiya (bi şirîkatî karekî pêre bikî) wî bikî wê feydê bide te."*

(MK13541 Taberanî, el-Mu'cemu'l-kebîr, XII, 319)



**179.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin weke giyayê ter e. Ba ji kî milîve weriyê ditewihê (belê nakeve). Dema ba disekine ew giya carek dî rast dibe. Vêca mumin jî wilo ye; bi bela û musîbeta ditewihê (belê nakeve) Kafir weke serwîzadê/sedir hişk û rep e, dema Xwedê xwest (bi carekî) ewê diqulipîne dide erdê."*

(B7466 Buxarî, Tewhîd, 31)



**180.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Ez sond dixwim bi Wî Xwedayê ku rihê Muhemmed di destê wî de ye! Mumin weke parçeyek zêr e; xwediyê wê bi nixafê jî pif bikiyê ne diguhere ne jî kêm dibe."*

(HM6872 Ibn Hanbel, II, 199; NM253 Hakîm, Mustedrek, I, 110 (1/76)



١٨١- حَدَّثَنِي عَبْدُ اللَّهِ بْنُ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَالَّذِي نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ، إِنَّ مَثَلَ الْمُؤْمِنِ لَكَمَثَلِ النَّحْلَةِ أَكَلَتْ طَيِّبًا، وَوَضَعَتْ طَيِّبًا، وَوَقَعَتْ فَلَمْ تَكْسِرْ وَلَمْ تُفْسِدْ."

# MINAFIQÎTÎ
## DURÛTÎ

١٨٢- عَنِ ابْنِ عُمَرَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ الْمُنَافِقِ كَمَثَلِ الشَّاةِ الْعَائِرَةِ بَيْنَ الْغَنَمَيْنِ، تَعِيرُ إِلَى هَذِهِ مَرَّةً وَإِلَى هَذِهِ مَرَّةً."



١٨٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ كَعْبٍ، عَنْ أَبِيهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ الْمُؤْمِنِ كَالْخَامَةِ مِنَ الزَّرْعِ تُفَيِّئُهَا الرِّيحُ مَرَّةً، وَتَعْدِلُهَا مَرَّةً، وَمَثَلُ الْمُنَافِقِ كَالْأَرْزَةِ لاَ تَزَالُ حَتَّى يَكُونَ انْجِعَافُهَا مَرَّةً وَاحِدَةً."



١٨٤- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَدْعُو يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الشِّقَاقِ وَالنِّفَاقِ وَسُوءِ الْأَخْلاَقِ."



**181.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: "*Ez sond dixwim bi wî Xwedayê ku rihê Muhemmed di destê wî de ye! Mumin weke mêşa hingiv e; tiştên xweş dixwe, tiştê xweş çêdike û xwe (li ser cihên xweş) divede, ne xira dike ne jî dişkîne.*"

(HM6872 Ibn Hanbel, II, 199; NM253 Hakîm, Mustedrek, I, 110 (1/76))

# MINAFIQÎTÎ
## DURÛTÎ

**182.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Minafiq weke wê peza şaşbuyî ya di neqeba du keriya de diçe û tê. Carna diçe vî keriyî û carna diçe keriyê dîtir.*"

(M7043 Muslim, Sıfatu'l-munafiqîn we ehkamuhum, 17)



**183.** Ebdullah bin K'eb (r.) ji bavê xwe riwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mumin weke giyayê ter e. Ba carna wî ditewîne û carna jî radike heta rast dibe. Minafiq weke serwîzadê/sedir hişk û rep e, heta ku di careke de bidiqulibe û bikeve erdê.*"

(B5643 Buxarî, Merda,1)



**184.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Pêxemberê Xwedê (s.) wiha dua dikir: '*Xwedayê min, ez xwe dispêrime te ji derketina ji heqiyê, ji nîfaqê û ji exlaqê pîs.*"

(D1546 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabi'l-witr, 32)



١٨٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ كَانَ مُنَافِقًا خَالِصًا، وَمَنْ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنْهُنَّ كَانَتْ فِيهِ خَصْلَةٌ مِنَ النِّفَاقِ حَتَّى يَدَعَهَا: إِذَا اؤْتُمِنَ خَانَ، وَإِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا عَاهَدَ غَدَرَ، وَإِذَا خَاصَمَ فَجَرَ."



١٨٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "تَجِدُ مِنْ شَرِّ النَّاسِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ عِنْدَ اللَّهِ، ذَا الْوَجْهَيْنِ الَّذِى يَأْتِى هَؤُلاَءِ بِوَجْهٍ وَهَؤُلاَءِ بِوَجْهٍ."

# ŞIRK
## HEBANDINA ŞIRÎKA JI XWEDÊ RE/ZILMA HERÎ MEZIN

١٨٧- عَنْ أَبِى إِدْرِيسَ قَالَ: سَمِعْتُ مُعَاوِيَةَ يَخْطُبُ وَكَانَ قَلِيلَ الْحَدِيثِ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُهُ يَخْطُبُ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "كُلُّ ذَنْبٍ عَسَى اللَّهُ أَنْ يَغْفِرَهُ إِلاَّ الرَّجُلُ يَقْتُلُ الْمُؤْمِنَ مُتَعَمِّدًا أَوِ الرَّجُلُ يَمُوتُ كَافِرًا."



١٨٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه قَالَ: سَأَلْتُ أَوْ سُئِلَ رَسُول اللَّهِ ﷺ : "أَيُّ الذَّنْبِ عِنْدَ اللَّهِ أَكْبَرُ؟ قَالَ: "أَنْ تَجْعَلَ لِلَّهِ نِدًّا وَهُوَ خَلَقَكَ."



**185.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Ev çar sıfet di kî de hebin ew kes minafiqek tam e. Kesê têde yek ji wan hebe heta ew dev ji wî sifetî bernede wê tê de sifetek ji sifetên minafiqtiyê hebe: Dema tiştek emanetê wî bû xiyanetê dike, dema biştexile derewa dike, dema söz bide lêdiqulubê û dema minaqeşe kir ji rê der dikeve."

(B34 Buxarî, Îman, 24)



**186.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Tê bînê Roja Qiyametê xirabtirê mirovan li cem Xwedê ew durûyê ku diçe cem van bi rûyekî û diçe cem yên dîtir bi rûyekî dîtir e.*"

(B6058 Buxarî, Edeb, 52)

# ŞIRK
## HEBANDINA ŞIRÎKA JI XWEDÊ RE/ZILMA HERÎ MEZIN

**187.** Ebû İdrîs dibêje: "Min guh da xutbeya Muawiye, welhal ewî ji Resûlê Xwedê hindik hedîs riwayet dikir. Di xutbê de digot: 'Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: *'Ji bilî kesê bi zanebûn muminek kuştibe û ji bilî ew kesê kafir miribe hêvî heye Xwedê tev gunehan efû bike.*'"

(N3989 Nesa'î, Muharebe, 1)



**188.** Ebdullah (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwede (s.) pirsî an jê hate pirsîn: 'Mezintirîn guneh li cem Xwedê kîjane?" Pêxember (s.) got: *'Digel ewî tu afirandî tu rabe ji Xwedêre şirîka bihebêne ye.*'"

(B4761 Buxarî, Tefsîr, (Furqân) 2)



١٨٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ مَاتَ يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئًا دَخَلَ النَّارَ."



١٩٠- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَلاَ أُنَبِّئُكُمْ بِأَكْبَرِ الْكَبَائِرِ؟ قُلْنَا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: "الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ..."

# RIZQ
## NIMETÊN JI XWEDÊ TÊN

١٩١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَدُ اللَّهِ مَلْأَى لاَ يَغِيضُهَا نَفَقَةٌ، سَحَّاءُ اللَّيْلَ وَالنَّهَارَ." وَقَالَ: "أَرَأَيْتُمْ مَا أَنْفَقَ مُنْذُ خَلَقَ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضَ؟، فَإِنَّهُ لَمْ يَغِضْ مَا فِى يَدِهِ." وَقَالَ: "عَرْشُهُ عَلَى الْمَاءِ وَبِيَدِهِ الْأُخْرَى الْمِيزَانُ يَخْفِضُ وَيَرْفَعُ."



١٩٢- عَنْ حَبَّةَ وَسَوَاءٍ ابْنَىْ خَالِدٍ قَالاَ: دَخَلْنَا عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَهُوَ يُعَالِجُ شَيْئًا فَأَعَنَّاهُ عَلَيْهِ. فَقَالَ: "لاَ تَيْأَسَا مِنَ الرِّزْقِ مَا تَهَزَّزَتْ رُءُوسُكُمَا. فَإِنَّ الإِنْسَانَ تَلِدُهُ أُمُّهُ أَحْمَرَ لَيْسَ عَلَيْهِ قِشْرٌ. ثُمَّ يَرْزُقُهُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ."



**189.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê tiştekî ji Xwedê re bixe şirîk û li ser vî halî bimire wê bikeve cehnemê."*

(M268 Muslim, Îman, 150)



**190.** Ebdurrehman bin Ebî Bekrete (r.) ji bavê xwe rîwayetkiriye ku Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *"Gelo mezintîrîn gunehê kebair çiye ji were bejim?"* Me got: "Belê keremke ya Resûlê Xwedê!" Vêca Resûlê Xwedê got: *"Hebandina şirîkekî ji Xwedê re û nepêkanîna heqê dê û bavan (neheqiya li wan)..."*

(B5976 Buxarî, Edeb, 6)

# RIZQ
## NIMETÊN JI XWEDÊ TÊN

**191.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Destên Xwedê tije ne. Şev û roj bêhed û bêhesab dide ev dayîn cardî jî, nimetên di destên Wî de xilas nake"* û gotiye: *"Ma hûn nabînin ka ji dema ku erd û asîman xuliqandî û pêve çiqas (nimet) infaq kirine? (Ev nimetên dayîn) tiştek ji nimetên destê Xwedê de kêm ne kiriye."* (Dewam kir) û got: *"Erşê Wî li ser avê ye û di destê Wî yê dîtir de şehîn/terazî heye. Yê hinekan zehf dide wan û yê hinekan hindik dide."*

(B7411 Buxarî, Tewhîd, 19)



**192.** Ji her du kurên Xalid el-Esedî Hebbe û Sewa hatiye riwayetkirin gotine: "Em çûne cem Resûlê Xwedê (me dît) tiştek te'mîr dikir. Vêca me jî alîkariya wî kir. Resûlê Xwedê ji me re got: *"Heta serê hewe dihejihê (hûn dijîn) ji rizq bêhêvî nebin. Dayîka însana ewan sor û rût tîne dinyayê. Piştre Xwedê Ezze we Celle rizqê wî didiyê."*

(İM4165 Ibn Maceh, Zuhd, 14)



١٩٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”انْظُرُوا إِلَى مَنْ هُوَ أَسْفَلَ مِنْكُمْ، وَلاَ تَنْظُرُوا إِلَى مَنْ هُوَ فَوْقَكُمْ. فَهُوَ أَجْدَرُ أَنْ لاَ تَزْدَرُوا نِعْمَةَ اللَّهِ.“



١٩٤- عَنِ الْمِقْدَامِ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”مَا أَكَلَ أَحَدٌ طَعَامًا قَطُّ خَيْرًا مِنْ أَنْ يَأْكُلَ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ...“



١٩٥- عَنْ جَابِرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”مَنْ أُبْلِيَ بَلاَءً فَذَكَرَهُ فَقَدْ شَكَرَهُ وَإِنْ كَتَمَهُ فَقَدْ كَفَرَهُ.“



١٩٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ أَنْ يُرَى أَثَرُ نِعْمَتِهِ عَلَى عَبْدِهِ.“

## BEREKET
### MALDARIYA ME‘NEWÎ

١٩٧- حَدَّثَنِي وَحْشِيُّ بْنُ حَرْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ أَنَّ أَصْحَابَ النَّبِيِّ ﷺ قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنَّا نَأْكُلُ وَلاَ نَشْبَعُ، قَالَ: ”فَلَعَلَّكُمْ تَفْتَرِقُونَ؟“ قَالُوا: نَعَمْ، قَالَ: ”فَاجْتَمِعُوا عَلَى طَعَامِكُمْ وَاذْكُرُوا اسْمَ اللَّهِ عَلَيْهِ يُبَارَكْ لَكُمْ فِيهِ.“



**193.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li yê bin xwe re meyze bikin; li yê ser xwe re meyze nekin. Ev, ji bo ku hûn nimetên Xwedê (yên dayîne we) piçûk (bêqîmet) nebînin ji we re baştir e."*

(M7430 Muslim, Zuhd we reqa'îq, 9)



**194.** Ji Miqdam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu kesî ji keda destê xwe çêtir tuwî xarin nexariye…"*

(B2072 Buxarî, Buyû', 15)



**195.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê (Xwedê) nimetek dabiyê û behsa wê nimetê (ji derdora xwe re) kiribe ewî şikrê wê nimetê kiri ye. Belê heke wê veşêre (ji kes re nebêje) ewî nankorî kiriye."*

(D4814 Ebû Dawûd, Edeb 11)



**196.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe riwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê dixaze elametê/eserê nimetên Wî li ser ebdên Wî werine xuyakirin."*

(T2819 Tirmizî, Edeb, 54; HM20176 Ibn Hanbel, IV, 438)

# BEREKET
## MALDARIYA ME'NEWÎ

**197.** Wehşî bin Herb bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku sehabiyê Pêxember gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Em dixwin belê em têrnabin." Pêxember (s.) got: *"Dibe ku hûn yek û yek dixwin."* Gotin: "belê." Li ser vêyekê Pêxember (s.) ji wan re got: *"Xwarinê bi hev re bixwin û (di destpêkê de) navê Xwedê bînin (bêjin Bismillah) wî çax wê bereket bikeve xarina we de."*

(D3764 Ebû Dawûd, Et'îme, 14; İM3286 Ibn Maceh, Et'îme, 17)



١٩٨- عَنْ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ طَعَامًا فَلْيَقُلِ: اللَّهُمَّ! بَارِكْ لَنَا فِيهِ وَأَطْعِمْنَا خَيْرًا مِنْهُ."



١٩٩- عَنْ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْبَيِّعَانِ بِالْخِيَارِ مَا لَمْ يَتَفَرَّقَا، فَإِنْ صَدَقَا وَبَيَّنَا بُورِكَ لَهُمَا فِى بَيْعِهِمَا، وَإِنْ كَذَبَا وَكَتَمَا مُحِقَتْ بَرَكَةُ بَيْعِهِمَا."



٢٠٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يُؤْتَى بِأَوَّلِ الثَّمَرِ فَيَقُول: "اللَّهُمَّ! بَارِكْ لَنَا فِى مَدِينَتِنَا وَفِى ثِمَارِنَا، وَفِى مُدِّنَا وَفِى صَاعِنَا بَرَكَةً مَعَ بَرَكَةٍ."

## NEZER
### ÇAVLÊXISTIN

٢٠١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْعَيْنُ حَقٌّ وَلَوْ كَانَ شَيْءٌ سَابَقَ الْقَدَرَ سَبَقَتْهُ الْعَيْنُ..."



٢٠٢- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اسْتَعِيذُوا بِاللَّهِ. فَإِنَّ الْعَيْنَ حَقٌّ."



**198.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji we xwarin xwar bila bêje: 'Ya Rebbî! Tu ji me re bereketê bixe vê xwarinê û xwarina jê çêtir îkrama me bike."*

(D3730 Ebû Dawûd, Eşribe, 21)



**199.** Ji Hekîm bin Hîzam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Yê dikire (malkir) û yê difiroşe (malfiroş) heta li cem hevin karin 'eqda xwe betal bikin. Heke rastî ji hevre bêjin û (eyba mal) beyan bikin wê bereket keve bazara wan de. Heke ji hev re derewan bikin û eyban veşêrin wê bereket ji bazara wan rabe."*

(M3858 Muslim, Buyû', 47; B2079 Buxarî, Buyû', 19)



**200.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku dema fêkiyê salê yê yekem dihate ji Resûlê Xwedê (s.) re wiha digot: *"Ya Rebbî! Bereket ser bereketê bixe bajarê me (Medînê), bixe fêkiyên me û pîvanên me de."*

(M3335 Muslim, Hec, 474)

# NEZER
## ÇAVLÊXISTIN

**201.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nezer (Çavlêxistin) heq e. Heke tiştek ketiba pêşiya qederê de wê nezer ketiba pêşiyê de..."*

(M5702 Muslim, Selam, 42)



**202.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: " *(Ji nezerê) Xwe bispêrin Xwedê. Lewra çavlêxistin (nezer) heq e."*

(ÎM3508 Ibn Maceh, Tib, 32)



٢٠٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُعَوِّذُ الْحَسَنَ وَالْحُسَيْنَ وَيَقُولُ: "إِنَّ أَبَاكُمَا كَانَ يُعَوِّذُ بِهَا إِسْمَاعِيلَ وَإِسْحَاقَ، أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللَّهِ التَّامَّةِ مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ وَهَامَّةٍ، وَمِنْ كُلِّ عَيْنٍ لاَمَّةٍ."



٢٠٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ عَقَدَ عُقْدَةً ثُمَّ نَفَثَ فِيهَا فَقَدْ سَحَرَ، وَمَنْ سَحَرَ فَقَدْ أَشْرَكَ، وَمَنْ تَعَلَّقَ شَيْئًا وُكِّلَ إِلَيْهِ."

# FAL, KEHANET, SIHIR, BÊOXURÎ
## BAWERIYA ZEÎF E

٢٠٥- عَنْ أَبِي مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الشَّمْسُ وَالْقَمَرُ لاَ يَنْكَسِفَانِ لِمَوْتِ أَحَدٍ وَلاَ لِحَيَاتِهِ، وَلَكِنَّهُمَا آيَتَانِ مِنْ آيَاتِ اللَّهِ فَإِذَا رَأَيْتُمُوهُمَا فَصَلُّوا."



٢٠٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "اجْتَنِبُوا الْمُوبِقَاتِ: الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ."



**203.** Ji İbn Ebbas hatiye ragihandin ku Pêxemberê Xwedê (s.) ji bo parastina Hesen û Huseyn wiha digot: *"Ez ji (şerrê) her şeytanî û ji heşeratan û ji her çavê nezerker xwe dispêrime peyvên Xweda yên bêkêmasî (îrade û hukmê wî)"* û digot: *"Bavê we jî, ji bo parastina Îsmaîl û Îshaq ev dua dixwend."*

(B3371 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 10)



**204.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê girêkekî çêke piştre jî pif bikiyê ewî sihir çêkiriye. Çi kesê sihir çêkiribe ewî şirîk ji Xwedê re hebandiye. Çi kesê (Bi niyeta ku wê wî biparêzîne) tiştekî bi xwe ve bike ew dimîne hêviya wê tişta bi xweve kiriye ve."*

(N4084 Nesa'î, Muharebe, 19)

# FAL, KEHANET, SIHIR, BÊOXURÎ
## BAWERIYA ZEÎF E

**205.** Ji Ebû Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Roj û heyv du ayetên Xwedê ne, ne jibo mirina tu kesî ne jî ji bo welidandina tu kesi xira nabin. Dema we dît roj an heyv xirabûn bilez nimêj bikin."*

(B1057 Buxarî, Kusûf, 13)



**206.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji van gunehên (însana) helak dikin dûr bêxin: Hebandina şirîkan ji Xwedê re û sihirbazî."*

(B5764 Buxarî, Tib, 48)



٢٠٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ عَقَدَ عُقْدَةً ثُمَّ نَفَثَ فِيهَا فَقَدْ سَحَرَ، وَمَنْ سَحَرَ فَقَدْ أَشْرَكَ، وَمَنْ تَعَلَّقَ شَيْئًا وُكِّلَ إِلَيْهِ."



٢٠٨- حَدَّثَنَا قَطَنُ بْنُ قَبِيصَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "الْعِيَافَةُ وَالطِّيَرَةُ وَالطَّرْقُ مِنَ الْجِبْتِ."



٢٠٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُعْجِبُهُ الْفَأْلُ الْحَسَنُ وَيَكْرَهُ الطِّيَرَةَ.

# BID'ET
## PEYDAKIRINA TIŞTEK NÛ

٢١٠- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ سَنَّ فِي الْإِسْلَامِ سُنَّةً حَسَنَةً فَعُمِلَ بِهَا بَعْدَهُ كُتِبَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِ مَنْ عَمِلَ بِهَا وَلَا يَنْقُصُ مِنْ أُجُورِهِمْ شَيْءٌ وَمَنْ سَنَّ فِي الْإِسْلَامِ سُنَّةً سَيِّئَةً فَعُمِلَ بِهَا بَعْدَهُ كُتِبَ عَلَيْهِ مِثْلُ وِزْرِ مَنْ عَمِلَ بِهَا وَلَا يَنْقُصُ مِنْ أَوْزَارِهِمْ شَيْءٌ."



**207.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê girêkekî çêke piştre jî pif bikiyê ewî sihir çêkiriye. Çi kesê sihir çêkiribe ewî şirîk ji Xwedê re hebandiye. Çi kesê (Bi niyeta ku wê wî biparêzîne) tiştekî bi xwe ve bike ew dimîne hêviya wê tişta bi xweve kiriye ve."*

(N4084 Nesa'î, Muharebe, 19)



**208.** Qeten bin Qebîse (r.) ji bavê xwe riwayet kiriye dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Bawerkirina bi bêoxiriya çirîwirî û firîna çûka, falvekirina bi avêtina kevirên piçûk an bi xîzkirina li ser qûmê, cureyên sêhr û kehanetê ne.'*"

(D3907 Ebû Dawûd, Tib, 23)



**209.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Tefe'ul (dîtina xêrê di tiştekî de) xweşa Pêxember (s.) diçû û tiyere (baweriya bi bêoxirîyê di tiştinan de) xweşa wî nediçû."

(ÎM3536 Ibn Maceh, Tib, 43)

# BID'ET
## PEYDAKIRINA TIŞTEK NÛ

**210.** Ji Cerîr bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê di Îslamê de rêyek qenc veke (pêşîvantiya karekî qenc bike) û piştî wî emel pê were kirin, jêre xêra wan kesên emel pêkirine heye û ji xêra wan kesan tu tişt kêm nabe. Çi kesê di Îslamê de rêyek xirab veke (pêşîvantiya karekî xirab bike) û piştî wî emel pê were kirin, jêre gunehê wan kesên emel pê kirine heye û ji gunehê wan kesan tu tişt kêm nabe."*

(M6800 Muslim, Ilim, 15)



٢١١- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ بِمَا هُوَ لَهُ أَهْلٌ ثُمَّ قَالَ: "أَمَّا بَعْدُ فَإِنَّ أَصْدَقَ الْحَدِيثِ كِتَابُ اللَّهِ وَإِنَّ أَفْضَلَ الْهَدْيِ هَدْيُ مُحَمَّدٍ وَشَرَّ الْأُمُورِ مُحْدَثَاتُهَا وَكُلَّ بِدْعَةٍ ضَلَالَةٌ."



٢١٢- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَحْدَثَ فِى أَمْرِنَا هَذَا مَا لَيْسَ مِنْهُ فَهُوَ رَدٌّ."



٢١٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَبَى اللَّهُ أَنْ يَقْبَلَ عَمَلَ صَاحِبِ بِدْعَةٍ حَتَّى يَدَعَ بِدْعَتَهُ."

**211.** Cabir dibêje: Pêxember (s.) ji me re xutbeyek xwend. Piştî ku hemdê Xwedê da û pesnê layîqê Wî kir got: *"Piştî van gotinan (zanibin) ku rasttirînê gotinan kitêba Xwedê ye, xêrtirê rêyan, rêya Muhemmed e. Karê herî xirab ewê (piştre li dîn) hatî zêdekirin e. Bid'et tev delalet e/ji rê derketin e."*

(HM14386 Ibn Hanbel, III, 310)



**212.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî di vî dînê me de, tiştek ku ne jê ye lê zêde bike, ew tişt tê redkirin."*

(M4492 Muslim, Eqdiye, 17; B2697 Buxarî, Sulh, 5)



**213.** Ji Ebdullah bin Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta xwedî bid'et dev ji bid'eta xwe neberdê Xwedê emelê wî jê qebûl nake."*

(İM50 Ibn Maceh, Sunnet, 7)

# MIKELLEFÎTÎ
## MESÛLIYETEK ÎNSANÎ

٢١٤- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "اكْلَفُوا مِنَ الْعَمَلِ مَا تُطِيقُونَ، فَإِنَّ اللَّهَ لاَ يَمَلُّ حَتَّى تَمَلُّوا، وَإِنَّ أَحَبَّ الْعَمَلِ إِلَى اللَّهِ أَدْوَمُهُ وَإِنْ قَلَّ."



٢١٥- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "رُفِعَ الْقَلَمُ عَنْ ثَلاَثَةٍ: عَنِ النَّائِمِ حَتَّى يَسْتَيْقِظَ، وَعَنِ الْمُبْتَلَى حَتَّى يَبْرَأَ، وَعَنِ الصَّبِيِّ حَتَّى يَكْبَرَ."



٢١٦- عَنْ أَبِى ذَرٍّ الْغِفَارِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَجَاوَزَ عَنْ أُمَّتِى الْخَطَأَ وَالنِّسْيَانَ وَمَا اسْتُكْرِهُوا عَلَيْهِ."



٢١٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ –قَالَ عَبْدُ الرَّحْمَنِ: عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى تَجَاوَزَ عَنْ أُمَّتِى كُلَّ شَيْءٍ حَدَّثَتْ بِهِ أَنْفُسَهَا مَا لَمْ تَكَلَّمْ بِهِ أَوْ تَعْمَلْ."



# MIKELLEFÎTÎ
## MESÛLIYETEK ÎNSANÎ

**214.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Emelê ku taqeta we pê heye bigirin ser xwe. Xwedê aciz nabe belê hûn aciz dibin. Bêguman Xwedê hez ji emelê daîmî dike çenda hindik be jî."*

(D1368 Ebû Dawûd, Tetawwu', 27)



**215.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesûliyet ji sê kesan hatiye rakirin: "Kesê di xewêde be heta şiyar bibe, kesê hişê wî ji serê wî çûbe heta hişê wî were serê wî û zarok heta balix bibe."*

(D4398 Ebû Dawûd, Hudûd, 17)



**216.** Ji Ebû Zer el-Xîfarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê ummeta min ji karên bi xeletî kirîn, jibîr kirîn û bi zorê (ne bi îrada xwe) kirîn efû kiriye (mesul nake)."*

(İM2043 Ibn Maceh, Telaq, 16)



**217.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê, heta pê neştexilîbe an jî nekiribe, ummeta min di derbarê her tişta ku di dilê xwe re derbas kirî de efû kiriye (mesuliyet ji ser rakiriye)."*

(N3463 Nesa'î, Telaq, 22)



٢١٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الدِّينَ يُسْرٌ، وَلَنْ يُشَادَّ الدِّينَ أَحَدٌ إِلاَّ غَلَبَهُ، فَسَدِّدُوا وَقَارِبُوا وَأَبْشِرُوا، وَاسْتَعِينُوا بِالْغَدْوَةِ وَالرَّوْحَةِ وَشَيْءٍ مِنَ الدُّلْجَةِ."

# ÎBADET
## MESÛLIYETA EBDÎTIYA XWEDÊ

٢١٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "كُلُّ سُلاَمَى عَلَيْهِ صَدَقَةٌ كُلَّ يَوْمٍ، يُعِينُ الرَّجُلَ فِى دَابَّتِهِ يُحَامِلُهُ [عَلَيْهَا] أَوْ يَرْفَعُ عَلَيْهَا مَتَاعَهُ صَدَقَةٌ، وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ وَكُلُّ خَطْوَةٍ يَمْشِيهَا إِلَى الصَّلاَةِ صَدَقَةٌ، وَدَلُّ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ."



٢٢٠- عَنْ مُعَاذٍ ﵁ قَالَ كُنْتُ رِدْفَ النَّبِيِّ ﷺ عَلَى حِمَارٍ يُقَالُ لَهُ عُفَيْرٌ، فَقَالَ: "يَا مُعَاذُ، هَلْ تَدْرِى حَقَّ اللَّهِ عَلَى عِبَادِهِ وَمَا حَقُّ الْعِبَادِ عَلَى اللَّهِ." قُلْتُ اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ. قَالَ: "فَإِنَّ حَقَّ اللَّهِ عَلَى الْعِبَادِ أَنْ يَعْبُدُوهُ وَلاَ يُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا، وَحَقَّ الْعِبَادِ عَلَى اللَّهِ أَنْ لاَ يُعَذِّبَ مَنْ لاَ يُشْرِكُ بِهِ شَيْئًا." فَقُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، أَفَلاَ أُبَشِّرُ بِهِ النَّاسَ قَالَ: "لاَ تُبَشِّرْهُمْ فَيَتَّكِلُوا."



**218.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Beguman dîn hêsan e. Kî mirovê dîn zehmet bike, wê ji pêkanîna dîn aciz bibe. Vêca (di dîn de) zêdegaviya nekin, rêya rasterast bigirin, (ji bo mukâfata ku hûn ji dêleva emelên qenc bistînin) bi keyf û şa bin. Ji dema sibeh û êvarê û hinek jî ji şevê feydê bistînin (ku hûn karibin taetê xwe dewam bikin."*

(B39 Buxarî, Îman, 29)

# ÎBADET
## MESÛLIYETA EBDÎTIYA XWEDÊ

**219.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye rîwayetkirin gotiye: "Ez li ser pişta kerekî ku navê wî Ufeyr li piş Pêxemberê Xwedê (s.) sîwar bûbûm. Vêca Pêxember (s.) got: *'Ya Mu'az! Ma tu dizanî heqê Xwedê li ser 'ebdê wî çi ye û heqê 'ebdan li ser Xwedê çi ye?'* Min got: 'Xwedê û Pêxemberê wî çêtir dizanin.' Ewî (s.) got: *'Bêguman heqê Xwedê li ser 'ebdên Wî ev e ku îbadetê wî bikin û tu şirîkan jê re çênekin. Heqê 'ebdan jî li ser Xwedê ev e ku Xwedê Teala ezabê nede ebdên xwe yê ku jê re tu şirîk çênekirine.'* Mu'az dibêje min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma gelo ez vê mizgînyê nedime însanan?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Nexêr vê mizgîniyê ne de wan, lewra dibe ku wî çaxî xwe sist bikin.'*"

(B2856 Buxarî, Cîhad, 46)



**220.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: *"Ji bo her movikeke di bedenê de her roj dayîna sedeqeyekî lazim e. Alîkarîya mirovekî ku dixaze li dewara xwe siwar bibe an jî tiştên wî li dewara wî bikî sedeqe ye. Şitexaliya xweş û her qevza di rêya nimêjê de tête avêtin sedeqe ye. Rê nîşandan sedeqe ye."*

(B2891 Buxarî, Cîhad, 72)



٢٢١- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...فَإِنَّ أَحَبَّ الْعَمَلِ إِلَى اللَّهِ أَدْوَمُهُ وَإِنْ قَلَّ."



٢٢٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَالَ مَنْ عَادَى لِي وَلِيًّا فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِي بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُ عَلَيْهِ، وَمَا زَالُ عَبْدِي يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أَحْبَبْتُهُ، كُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِي يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِي يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِي يَبْطُشُ بِهَا وَرِجْلَهُ الَّتِي يَمْشِي بِهَا، وَإِنْ سَأَلَنِي لأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِي لأُعِيذَنَّهُ..."



٢٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ...قَالَ: "الْإِحْسَانُ: أَنْ تَعْبُدَ اللَّهَ كَأَنَّكَ تَرَاهُ فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تَرَاهُ فَإِنَّهُ يَرَاكَ."

# DUA
## KAKILA ÎBADETÊ

٢٢٤- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قَالَ: قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيُّ الدُّعَاءِ أَسْمَعُ؟ قَالَ: "جَوْفُ اللَّيْلِ الْآخِرُ، وَدُبُرَ الصَّلَوَاتِ الْمَكْتُوبَاتِ."



**221.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Bêguman Xwedê hez ji emelê daîmî dike çenda hindik jî be.*"

(D1368 Ebû Dawûd, Tetawwu', 27)



**222.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xweda Teala ferman kiriye: 'Kî neyartiya dostekî min bike ez jêre îlana herbê dikim. Ebdê min ji tiştên ku min li ser wî ferz kirîne zehftir bi tişteka dîtir ku hez jê bikim xwe nêzî min nekiriye. Ebdê min bi ibadetên nafîle xwe nêzî min dike heta ku ez jê hez dikim. (dema min jê hez kir) Êdî ez dibime guhê wî yê pê dibihîze, çavên wî yê pê dibîne, destê wî yê pê digire, lingê wî yê pê dimeşe. Heke ji min bixwaze ezê mitleqa daxaza wî pêkbînim, heke xwe bispêre min mitleqa ezê wî biparêzim.'"*

(B6502 Buxarî, Rîqaq, 38)



**223.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Îhsan, ew e ku tu îbadetê Xwedê bikî weke ku tu Wî dibînî. Heke tu Wî nebine jî ew te dibîne."*

(B4777 Buxarî, Tefsîr, Luqman, 2)

# DUA
## KAKILA ÎBADETÊ

**224.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: "Ya Resûlê Xwedê! Kîjan dua zehftir têne qebûlkirin?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ew duayên piştî nîvê şevê û yên piştî nimêjên ferz têne kirin."*

(T3499 Tirmizî, De'ewat, 79)



٢٣٠- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الدُّعَاءُ هُوَ الْعِبَادَةُ." ثُمَّ قَرَأَ ﴿وَقَالَ رَبُّكُمُ ادْعُونِى أَسْتَجِبْ لَكُمْ إِنَّ الَّذِينَ يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتِى سَيَدْخُلُونَ جَهَنَّمَ دَاخِرِينَ﴾



٢٣١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ فُتِحَ لَهُ مِنْكُمْ بَابُ الدُّعَاءِ فُتِحَتْ لَهُ أَبْوَابُ الرَّحْمَةِ وَمَا سُئِلَ اللَّهُ شَيْئًا يَعْنِى أَحَبَّ إِلَيْهِ مِنْ أَنْ يُسْأَلَ الْعَافِيَةَ." وَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ الدُّعَاءَ يَنْفعُ مِمَّا نَزَلَ وَمِمَّا لَمْ يَنْزِلْ فَعَلَيْكُمْ عِبَادَ اللَّهِ بِالدُّعَاءِ."



٢٣٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يُسْتَجَابُ لِأَحَدِكُمْ مَا لَمْ يَعْجَلْ فَيَقُولُ: قَدْ دَعَوْتُ فَلَمْ يُسْتَجَبْ لِى."



٢٣٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ادْعُوا اللَّهَ وَأَنْتُمْ مُوقِنُونَ بِالْإِجَابَةِ، وَاعْلَمُوا أَنَّ اللَّهَ لاَ يَسْتَجِيبُ دُعَاءً مِنْ قَلْبٍ غَافِلٍ لاَهٍ."

**225.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) behsa Roja Înê kir û got: *"Têde demek wilo heye çi Misilmanê di nimêjê de liqayî wê demê were û tiştekî ji Xwedê bixaze mitleqa wê Xwedê daxwaziya wî bidiyê."*

(M1969 Muslim, Cum'a, 13)



**226.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirê dua, ew duaya Roja Erefê tê kirin e."*

(T3585 Tirmizî, De'ewat, 122)



**227.** Ji Hz. Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji bo çûyîna 'umrê destûr ji Resûlê Xwedê (s.) xwest: Vêca Resûlê Xwedê (s.) izna wî da û jêre got: *"Birayê min! Me jî bixe şirîkê duayên xwe û me jibîr neke."*

(İM2894 Ibn Maceh, Menasik, 5)

# ADABÊN DUA
## BERÊXWEDANA XWEDÊ

**228.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li cem Xwedê ji dua qîmettir tiştek tune ye."*

(T3370 Tirmizî, De'ewat, 1; İM3829 Ibn Maceh, Dua, 1)



**229.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dua kakilê îbadetê ye (yani ew bi xwe ye)."*

(T3371 Tirmizî, De'ewat, 1)



٢٣٠- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الدُّعَاءُ هُوَ الْعِبَادَةُ." ثُمَّ قَرَأَ ﴿وَقَالَ رَبُّكُمُ ادْعُونِى أَسْتَجِبْ لَكُمْ إِنَّ الَّذِينَ يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتِى سَيَدْخُلُونَ جَهَنَّمَ دَاخِرِينَ﴾



٢٣١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ فُتِحَ لَهُ مِنْكُمْ بَابُ الدُّعَاءِ فُتِحَتْ لَهُ أَبْوَابُ الرَّحْمَةِ وَمَا سُئِلَ اللَّهُ شَيْئًا يَعْنِى أَحَبَّ إِلَيْهِ مِنْ أَنْ يُسْأَلَ الْعَافِيَةَ." وَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ الدُّعَاءَ يَنْفعُ مِمَّا نَزَلَ وَمِمَّا لَمْ يَنْزِلْ فَعَلَيْكُمْ عِبَادَ اللَّهِ بِالدُّعَاءِ."



٢٣٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يُسْتَجَابُ لِأَحَدِكُمْ مَا لَمْ يَعْجَلْ فَيَقُولُ: قَدْ دَعَوْتُ فَلَمْ يُسْتَجَبْ لِى."



٢٣٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ادْعُوا اللَّهَ وَأَنْتُمْ مُوقِنُونَ بِالْإِجَابَةِ، وَاعْلَمُوا أَنَّ اللَّهَ لاَ يَسْتَجِيبُ دُعَاءً مِنْ قَلْبٍ غَافِلٍ لاَهٍ."

**230.** Ji Numan bin Beşîr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dua îbadet bi xwe ye."* Piştre ev ayet xwendiye: *"Rebbê we ferman kiriye: 'Gazî min bikin (dua bikin) ezê qebûl bikim. Ew kesên ji kibra xwe ebdîtiya min nakin wê bi rezîlî bikevine cehnemê de.'"*

(Mu'min, 40/60; T3372 Tirmizî, De'ewat, 1; D1479 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabi'l-witr, 23)



**231.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji kî ji we re deriyê dua vebûbe (gelek) deriyên rehmetê jêre vebûne. Xwedê ji her tiştî zêdetir dive ku sihhet û afiyet jê were xwestin."* Piştre Resûlê Xwedê wiha dewam kir: *"Dua feydê dide belayên hatîn serê we û feydê dide belayên hê nehatîn serê we. Vêca ey ebdên Xwedê! Xwe bidine dua."*

(T3548 Tirmizî, De'ewat, 101)



**232.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta kesek ji we ecele neke û nebêje: 'Min dua kir belê dua min qebûl nebû' wê mitleqa dua wî kesî qebûl bibe."*

(D1484 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebvabi'l-witr, 23; M6935 Muslim, Zikir we dua we tewbe we istixfar, 91)



**233.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi baweriya ku wê Xwedê dua we qebûl bike dua bikin. Zanibin ku Xwedê dua ji qelbê xafil û meşxûl qebûl nake."*

(T3479 Tirmizî, De'ewat, 65)

# QUNÛT
## JI BO DUAKIRINÊ SEKNA DI HUZÛRA XWEDÊ

٢٣٤- عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: بَعَثَ النَّبِيُّ ﷺ سَرِيَّةً يُقَالُ لَهُمُ: الْقُرَّاءُ، فَأُصِيبُوا فَمَا رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَجَدَ عَلَى شَيْءٍ مَا وَجَدَ عَلَيْهِمْ، فَقَنَتَ شَهْرًا فِى صَلاَةِ الْفَجْرِ...



٢٣٥- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ فِى آخِرِ وِتْرِهِ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِرِضَاكَ مِنْ سَخَطِكَ وَبِمُعَافَاتِكَ مِنْ عُقُوبَتِكَ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْكَ لاَ أُحْصِى ثَنَاءً عَلَيْكَ، أَنْتَ كَمَا أَثْنَيْتَ عَلَى نَفْسِكَ."



٢٣٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَنَتَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى صَلاَةِ الْعَتَمَةِ شَهْرًا، يَقُولُ فِى قُنُوتِهِ: "... اللَّهُمَّ نَجِّ الْمُسْتَضْعَفِينَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ..."



٢٣٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! ادْعُ عَلَى الْمُشْرِكِينَ، قَالَ: "إِنِّى لَمْ أُبْعَثْ لَعَّانًا، وَإِنَّمَا بُعِثْتُ رَحْمَةً."

# QUNÛT
## JI BO DUAKIRINÊ SEKNA DI HUZÛRA XWEDÊ

**234.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) birrek sehabe ji wanre digotin Qurra (ji bo teblîxa dîn bikin) şiyande (Necdê). Belê (li cem Bîra Maûnê ji teref neyar ve pêşiya wan hate girtin) hatine kuştin. Vêca awayê min Pêxember (s.) li ser kuştina wan hezinî li ser tiştek dîtir hezinî nedîtiye. Li ser vê yeke Resûlê Xwedê meheki sax di nimêja sibihê de qunût xwend..."

(B6394 Buxarî, De'ewat, 58)



**235.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di dawiya sinnetê Witrê de ev dua dixwend: *"Ez ji 'enra te xwe dispêrime rizaya te û ez ji cezakirina te xwe dispêrime efukirina te û ez ji te xwe dispêrime te. Ez çiqasî pesnê te bidim cardî jî têrê nake, Te xwe çawa medihkiribe tu wisayî."*

(N1748 Nesa'î, Qıyamu'l-leyl we tatawwuu'n-nehar, 51)



**236.** Ji Ebû Hureyre hatiye rîwayetkirin gotiye: "Pêxember (s.) mehekî di nimêja işayê de qunût xwend. Di qunûtê de ev dua dixwend: '...*Ya Rebbî! Tu muminên halzeîf (ji te'dariya muşrikan) xilas bike...*'"

(D1442 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebvabi'l-witr, 10)



**237.** Ji Ebû Hureyre hatiye rîwayetkirin gotiye: "Hate gotin: 'Ya Resûlê Xwedê! Bêduayiya li mişrika bike.' Resûlê Xwedê got: *'Ez nehatime şiyandin bo ku lenetê bikim; Ez ji bo rehmê bikim hatime şiyandin.'*"

(M6613 Muslim, Birr we sile, 87)

# ŞUKUR
## ZANÎNA QEDRÊ NIMETAN!

٢٣٨- عَنْ زِيَادٍ قَالَ: سَمِعْتُ الْمُغِيرَةَ ﵁ يَقُولُ: إِنْ كَانَ النَّبِيُّ ﷺ لَيَقُومُ أَوْ لِيُصَلِّيَ حَتَّى تَرِمَ قَدَمَاهُ أَوْ سَاقَاهُ: فَيُقَالُ لَهُ، فَيَقُولُ: "أَفَلاَ أَكُونُ عَبْدًا شَكُورًا؟"



٢٣٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ لاَ يَشْكُرِ النَّاسَ لاَ يَشْكُرِ اللَّهَ."



٢٤٠- عَنْ جَابِرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَبْلَى بَلاَءً فَذَكَرَهُ فَقَدْ شَكَرَهُ، وَإِنْ كَتَمَهُ فَقَدْ كَفَرَهُ."



٢٤١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الطَّاعِمُ الشَّاكِرُ بِمَنْزِلَةِ الصَّائِمِ الصَّابِرِ."

# ŞUKUR
## ZANÎNA QEDRÊ NIMETAN!

**238.** Ji Ziyad (r.) hatiye rîwayetkirin gotiye: "Min ji Muxîre (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) (bi şev) nimêj dikir heta piyê wî an ranê wî diwerimîn. Dema li ser vî halê wî tiştin jê re bihata gotin ewî digot: *'Ma ez nebime ebdekî şukurdar?'"*

(B1130 Buxarî, Teheccud, 6)



**239.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê şukrê (sipasiya) însana neke ew şukrê Xwedê jî nake."*

(T1954 Tirmizî, Birr we sile, 35)



**240.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê (Xwedê) nimetek dabiyê û behsa wê nimetê (ji derdora xwe re) kiribe, ewî şikrê wê nimetê kiriye. Belê heke wê veşêre (ji kes re nebêje) ewî nankorî kiriye"*

(D4814 Ebû Dawûd, Edeb, 11)



**241.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dereca kesê ku dixwe û şikrê (Xwedê) dike di dereca rojîgirê sabir de ye."*

(T2486 Tirmizî, Sıfatu'l-qıyame, 43; İM1764 Ibn Maceh, Siyam, 55)

# ZIKIR
## BÎRANÎNA XWEDÊ

٢٤٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا مَرَرْتُمْ بِرِيَاضِ الْجَنَّةِ فَارْتَعُوا"، قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَا رِيَاضُ الْجَنَّةِ؟ قَالَ: "الْمَسَاجِدُ." قُلْتُ: وَمَا الرَّتْعُ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: "سُبْحَانَ اللَّهِ وَالْحَمْدُ لِلَّهِ وَلاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَاللَّهُ أَكْبَرُ."



٢٤٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَذْكُرُ اللَّهَ عَلَى كُلِّ أَحْيَانِهِ.



٢٤٤- حَدَّثَنِى عَمْرُو بْنُ عَبَسَةَ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "أَقْرَبُ مَا يَكُونُ الرَّبُّ مِنَ الْعَبْدِ فِى جَوْفِ اللَّيْلِ الآخِرِ فَإِنِ اسْتَطَعْتَ أَنْ تَكُونَ مِمَّنْ يَذْكُرُ اللَّهَ فِى تِلْكَ السَّاعَةِ فَكُنْ."



٢٤٥- عَنْ أَبِى مُوسَى رضي الله عنه قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَثَلُ الَّذِى يَذْكُرُ رَبَّهُ وَالَّذِى لاَ يَذْكُرُ مَثَلُ الْحَيِّ وَالْمَيِّتِ."



٢٤٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَقُولُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِى بِى، وَأَنَا مَعَهُ حِينَ يَذْكُرُنِى، إِنْ ذَكَرَنِى فِى نَفْسِهِ ذَكَرْتُهُ فِى نَفْسِى، وَإِنْ ذَكَرَنِى فِى مَلَإٍ ذَكَرْتُهُ فِى مَلَإٍ هُمْ خَيْرٌ مِنْهُمْ..."

# ZIKIR
## BÎRANÎNA XWEDÊ

**242.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke hûn di ber bexçeyên cennetê re derbas bûn, ji nimetê wê feydê bigirin."* Li ser vêyekê min pirsî: "Ya Resûlê Xwedê! Ma bexçê cennetê çi ne?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Mizgeftin!"* Min got: "(wî çaxî) er-Ret'u/feydegirtina ji nimetê wê çiye? Resûlê Xwedê got: *"Subhanellah we'l-hemdulillah we la îlahe îllellah wellahu ekber" (Xwedê ji her kêmasiyan munezzeh e, hemd ji Xwedê re be, ji bilî Xwedê Ellah tu xweda tunehin, Xweda herî mezin e.)*

(T3509 Tirmizî, De'ewat, 82)



**243.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) her wext zikrê Xwedê dikir."



(M826 Muslim, Heyîz, 117)

**244.** Ji 'Emr bin 'Ebse (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Ew dema ku Xwedê nêzîktirînê ebdê xwe ye, dema dawiya nîvê şevê ye. Vêca heke te karî tu bibe ji yên di wî wextî de zikrê Xwedê dikin, bibe."*

(T3579 Tirmizî, De'ewat, 118)



**245.** Ji Ebû Mûsa el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela kesê zikrê Rebbê xwe dike û yê nake weke mesela kesê sax û kesê mirî ye."*

(B6407 Buxarî, De'ewat, 66)



**246.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwede (s.) gotiye: "Xwedê Ezze we Celle dibêje: '*Ebdê min çi hêviyê ji min bike ez weke hêviya wî me (ezê hêviya wî pêkbînim) dema ew min bîr tîne ez bi wîre me, heke ew di nefsa xwe de min bîr bîne ezê jî wî di nefsa xwe de bîr bînim, heke ew di nav komekê de min bîr bîne ezê wî di nav komeke qenctir de bîr bînim...*"

(M6805 Muslim, Zikir we dua we tewbe we istîxfar, 2; B7405 Buxarî, Tewhîd, 15)

# TOBE
## KESÊ JI GUNEHÎ VEGERE WEKE KESÊ BÊGUNEH E

٢٤٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَعْقِلٍ قَالَ كَانَ أَبِي عِنْدَ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ فَسَمِعَهُ يَقُولُ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "النَّدَمُ تَوْبَةٌ."



٢٤٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "التَّوْبَةُ مِنَ الذَّنْبِ أَنْ يَتُوبَ مِنْهُ ثُمَّ لَا يَعُودَ فِيهِ."



٢٤٩- عَنْ أَسْمَاءَ بْنِ الْحَكَمِ الْفَزَارِيِّ قَالَ سَمِعْتُ عَلِيًّا رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ يَقُولُ: ...وَحَدَّثَنِي أَبُو بَكْرٍ وَصَدَقَ أَبُو بَكْرٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَا مِنْ عَبْدٍ يُذْنِبُ ذَنْبًا فَيُحْسِنُ الطُّهُورَ ثُمَّ يَقُومُ فَيُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ ثُمَّ يَسْتَغْفِرُ اللَّهَ إِلاَّ غَفَرَ اللَّهُ لَهُ."



٢٥٠- عَنْ أَبِي عُبَيْدَةَ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "التَّائِبُ مِنَ الذَّنْبِ كَمَنْ لاَ ذَنْبَ لَهُ."



٢٥١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَلَّهُ أَشَدُّ فَرَحًا بِتَوْبَةِ أَحَدِكُمْ، مِنْ أَحَدِكُمْ بِضَالَّتِهِ، إِذَا وَجَدَهَا."

# TOBE
## KESÊ JI GUNEHÎ VEGERE WEKE KESÊ BÊGUNEH E

**247.** Ji Ebdullah bin Me'qil (r.) hatiye rîwayetkirin gotiye: "Bavê min li cem Ebdullah bin Mesûd bû. Vêca jê bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Poşmanî (ya ji gunehan) tobe ye.'"'*

(HM4012 Ibn Hanbel, I, 423)



**248.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tobekirina ji gunehî ewe ku (ebdê Xwedê) dev ji gunehî berde û carek dî lê nevegere."*

(HM4264 Ibn Hanbel, I, 446)



**249.** Esma' b. el-Hekem el-Fezarî (r.) dibêje: "Min ji Elî (r.) bihîst digot: '... Ebû Bekir (r.) ji min re got û ewî rast got: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Çi ebdê gunehekî bike piştre destnimêjek xweşik bigire û paşê rabe du riket nimêj bike û daxaziya efukirinê ji Xwedê bike mitleqa wê Xwedê wî kesî efu bike.'"'*

(D1521 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebvabi'l-witr, 26)



**250.** Ebû Ubeyde bin Ebdullah (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji guneh tobe bike, weke kesê bê guneh e."*

(İM4250 Ibn Maceh, Zuhd, 30)



**251.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yek ji we heywana xwe ya windabûyî dibîne, çiqas keyfxweş dibe, bêguman Xweda bi tobekirina yekî ji we, zehftir keyfxweş dibe."*

(M6953 Muslim, Tewbe, 2)

# PAQIJÎ
## PAQIJIYA MADDÎ Û ME'NEWÎ

٢٥٢- عَنْ أَبِى أَيُّوبَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "إِذَا أَتَيْتُمُ الْغَائِطَ فَلاَ تَسْتَقْبِلُوا الْقِبْلَةَ وَلاَ تَسْتَدْبِرُوهَا بِبَوْلٍ وَلاَ غَائِطٍ وَلَكِنْ شَرِّقُوا أَوْ غَرِّبُوا."

٢٥٣- عَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ: "أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا ذَهَبَ الْمَذْهَبَ أَبْعَدَ."

٢٥٤- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "اتَّقُوا الْمَلاَعِنَ الثَّلاَثَ: الْبَرَازَ فِى الْمَوَارِدِ، وَقَارِعَةِ الطَّرِيقِ، وَالظِّلِّ."

٢٥٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ رضي الله عنه قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا دَخَلَ الْخَلاَءَ قَالَ: "اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْخُبُثِ وَالْخَبَائِثِ."

# DESTNİMÊJ Û TEYEMMUM
## JÎ BO ÎBADETÊ HAZIRIYA ME'NEWÎ

٢٥٦- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مِفْتَاحُ الْجَنَّةِ الصَّلاَةُ وَمِفْتَاحُ الصَّلاَةِ الْوُضُوءُ."

# PAQIJÎ
## PAQIJIYA MADDÎ Û ME'NEWÎ

**252.** Ji Ebû Eyyûb (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema hûn destava piçûk an ya mezin dikin, berê xwe û pişta xwe nedine qiblê; berê xwe bidin rojhilat an jî bidin rojava."*

(M609 Muslim, Teharet, 59)



**253.** Ji Muxîre bin Şu'be (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) dixwest here destavê, (heta ku tu kes wî nebîne) xwe dûr dixist."

(D1 Ebû Dawûd, Teharet, 1)



**254.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji sê tiştên dibine sebebê lenetlêanînê biparêzin; Destava xwe li derdora kehniyên avê, di nîvê rê de û di cihên sih de nekin."*

(D26 Ebû Dawûd, Teharet, 14)



**255.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) diçû tuwaletê digot: "*Ellahumme innî e'ûzu bike mine'l-xubsî we'l-xebaîs*" *(Ya Rebbî! Ez ji her cure pîsatiyê û ji necasetê xwe dispêrime te.)*

(B6322 Buxarî, De'ewat, 15)

# DESTNİMÊJ Û TEYEMMUM
## JÎ BO ÎBADETÊ HAZIRIYA ME'NEWÎ

**256.** Ji Cabir bin Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mifta cennetê nimêj e û mifta nimêjê jî destnimêj e."*

(T4 Tirmizî, Teharet, 1; HM14717 Ibn Hanbel, III, 341)



٢٥٧- عَنْ حُمْرَانَ، فَلَمَّا تَوَضَّأَ عُثْمَانُ قَالَ:... سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ يَتَوَضَّأُ رَجُلٌ فَيُحْسِنُ وُضُوءَهُ، وَيُصَلِّى الصَّلاَةَ إِلاَّ غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الصَّلاَةِ حَتَّى يُصَلِّيَهَا."



٢٥٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا تَوَضَّأَ الْعَبْدُ الْمُسْلِمُ -أَوِ الْمُؤْمِنُ- فَغَسَلَ وَجْهَهُ خَرَجَ مِنْ وَجْهِهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ نَظَرَ إِلَيْهَا بِعَيْنَيْهِ مَعَ الْمَاءِ -أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ- فَإِذَا غَسَلَ يَدَيْهِ خَرَجَ مِنْ يَدَيْهِ كُلُّ خَطِيئَةٍ كَانَ بَطَشَتْهَا يَدَاهُ مَعَ الْمَاءِ -أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ- فَإِذَا غَسَلَ رِجْلَيْهِ خَرَجَتْ كُلُّ خَطِيئَةٍ مَشَتْهَا رِجْلاَهُ مَعَ الْمَاءِ -أَوْ مَعَ آخِرِ قَطْرِ الْمَاءِ- حَتَّى يَخْرُجَ نَقِيًّا مِنَ الذُّنُوبِ."



٢٥٩- عَنْ أَبِى حَازِمٍ قَالَ كُنْتُ خَلْفَ أَبِى هُرَيْرَةَ وَهُوَ يَتَوَضَّأُ لِلصَّلاَةِ فَكَانَ يَمُدُّ يَدَهُ حَتَّى تَبْلُغَ إِبْطَهُ فَقُلْتُ لَهُ: يَا أَبَا هُرَيْرَةَ! مَا هَذَا الْوُضُوءُ؟ فَقَالَ: يَا بَنِى فَرُّوخَ! أَنْتُمْ هَا هُنَا؟ لَوْ عَلِمْتُ أَنَّكُمْ هَا هُنَا مَا تَوَضَّأْتُ هَذَا الْوُضُوءَ. سَمِعْتُ خَلِيلِى ﷺ يَقُولُ: "تَبْلُغُ الْحِلْيَةُ مِنَ الْمُؤْمِنِ حَيْثُ يَبْلُغُ الْوَضُوءُ."



٢٦٠- عَنْ عَمَّارِ بْنِ يَاسِرٍ، أَنَّ النَّبِيَّ اللَّهِ ﷺ ﴿قَالَ يُونُسُ: إِنَّهُ سَأَلَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنْ التَّيَمُّمِ؟﴾ فَقَالَ: "ضَرْبَةٌ لِلْكَفَّيْنِ وَالْوَجْهِ."



**257.** Ji Humran (r.) hatiye ragihandin ku dema Osman (r.) destnimêj girt got: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Çi kesê destnimêj bigire û destnimêja xwe qenc bigire, piştre jî nimêj bike mitleqa ew (gunehê) di neqeba destnimêjê û nimêjê de kirî heta wê nimêjê bike, wê werine efûkirin.'*"

(B160 Buxarî, Wudû', 24; M540 Muslim, Teharet, 5)



**258.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ebdekî misilman an mumin destnimêj bigire û rûyê xwe bişû, çi gunehê bi çavê xwe lê meyze kirî heyî, wê bi avê re an jî bi dilopa dawî ya avê re ji rûyê wî derkeve here. Dema destên xwe şiştin, çi gunehê bi destê xwe kirî heyî hemî wê bi avê re an jî bi dilopa dawî ya avê re ji destê wî derkeve here. Dema piyê xwe şiştin, çi gunehê bi lingê xwe baskî wê ve çûbe heyî wê bi avê re an jî bi dilopa dawî ya avê re derkeve here. Heta di dawiyê de ew ebd ji gunehan (tevan) paqij dibe."*

(M577 Muslim, Teharet, 32; T2 Tirmizî, Teharet, 1)



**259.** Ebû Hazim (r.) gotiye: "Ebû Hureyre ji bo nimêjê destnimêj digirt û ez li piş wî bûm. Vêca destê xwe dirêj dikir heta digihate binçengê wî (hemî dişişt). Min jê pirsî: 'Ma ev çi destnimêje tu digirî ey Ebû Hureyre?' Ewî got: 'Ey Benî Ferrûx! Ma hûn li vir bûn? Min zanîba hûn li vê derê ne min bi vî şiklî destnimêj nedigirt. Belê min ji dostê xwe (s.) bihîst digot: *'Zîneta (nûra) muminî heta dera ava destnimêjê digihiyê dirêj dibe.'*"

(M586 Muslim, Teharet, 40)



**260.** Ji 'Emmar bin Yasîr (r.) hatiye ragihandin ku ewî pirsa teyemmumê ji Pêxember (s.) kir. Pêxember (s.) wiha got: *"Teyemmum, ji bo her yekî ji rû û ji destan destdanînek e (carek destê xwe li axê dayîn e)."*

(HM18509 Ibn Hanbel, IV, 264; DM770 Darîmî, Teharet, 65)



٢٦١- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الصَّعِيدُ الطَّيِّبُ وَضُوءُ الْمُسْلِمِ وَإِنْ لَمْ يَجِدِ الْمَاءَ عَشْرَ سِنِينَ."

# XUSL
## XWE ŞIŞTINA JI CENABETÊ

٢٦٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: لَقِيَنِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى طَرِيقٍ مِنْ طُرُقِ الْمَدِينَةِ وَأَنَا جُنُبٌ فَاخْتَنَسْتُ فَذَهَبْتُ فَاغْتَسَلْتُ ثُمَّ جِئْتُ فَقَالَ: "أَيْنَ كُنْتَ يَا أَبَا هُرَيْرَةَ؟." قَالَ: قُلْتُ: إِنِّى كُنْتُ جُنُبًا فَكَرِهْتُ أَنْ أُجَالِسَكَ عَلَى غَيْرِ طَهَارَةٍ. قَالَ: "سُبْحَانَ اللَّهِ إِنَّ الْمُسْلِمَ لاَ يَنْجُسُ."



٢٦٣- حَدَّثَنِى أَبُو أَيُّوبَ الأَنْصَارِيُّ وَجَابِرُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ وَأَنَسُ بْنُ مَالِكٍ أَنَّ هَذِهِ الْآيَةَ نَزَلَتْ: ﴿فِيهِ رِجَالٌ يُحِبُّونَ أَنْ يَتَطَهَّرُوا وَاللَّهُ يُحِبُّ الْمُطَّهِّرِينَ﴾ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ الْأَنْصَارِ إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَثْنَى عَلَيْكُمْ فِى الطُّهُورِ فَمَا طُهُورُكُمْ؟" قَالُوا: نَتَوَضَّأُ لِلصَّلاَةِ وَنَغْتَسِلُ مِنَ الْجَنَابَةِ وَنَسْتَنْجِي بِالْمَاءِ. قَالَ: "فَهُوَ ذَاكَ فَعَلَيْكُمُوهُ."



٢٦٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لِلَّهِ تَعَالَى عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ حَقٌّ أَنْ يَغْتَسِلَ فِى كُلِّ سَبْعَةِ أَيَّامٍ يَوْمًا."



**261.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Axa paqij, deh sala avê nebînê jî, ji misilmanî re cihê ava destnimêjê digire."*

(N323 Nesaî, Teharet, 203; T124 Tirmizî, Taharet, 92)

# XUSL
## XWE ŞIŞTINA JI CENABETÊ

**262.** Ji Ebû Eyyûb el-Ensarî (r.) û Cabir bin Ebdîllah (r.) û Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin gotine: "Dema ev ayet nazil bû: *'Têde (Mizgefta Qubayêde) zilamin hene hez ji paqijiyê dikin. Xwedê jî hez ji yên xwe paqij dikin, dike.'* (Tewbe, 9/108) Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ey koma Ensariyan! Bêguman Xwedê di derbarê paqijiyê de pesnê we daye, vêca ev paqijiya hewe çiye?'* Ewan gotin: 'Em ji bo nimêjê destnimêj digirin û ji cenabetê xwe dişûn û xwe bi avê tahir dikin.' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Nexwe (sebebê medhê Xwedê ji we re) ev bi xwe ye. Wî çaxî dewam bikin (dev jê neberdin).'"*

(ÎM355 Ibn Maceh, Teharet, 28)



**263.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) di sikakek ji sikakê Medînê de liqayî min hat û ez bi cenabet bûm. Vêca min xwe paşde da û çûm min xwe şişt û vegeriyam." Resûlê Xwedê (s.) ji min pirsî: *"Tu li kû mayî ey Ebu Hureyre?"* Min got: "Ez bi cenabet bûm. Min nexwest bê teharet li cem te rûnim." Li ser vêyekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Subhanellah! Bêguman Misilman necis nabe."*

(D231 Ebû Dawûd, Teharet, 91)



**264.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heqê Xwedê Teala li ser her Misilmanî heye ku di her heft rojan de rojek serê xwe bişû."*

(B898 Buxarî, Cum'a, 12)



٢٦٥- عَنْ يَعْلَى: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رَأَى رَجُلاً يَغْتَسِلُ بِالْبَرَازِ فَصَعِدَ الْمِنْبَرَ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ وَقَالَ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حَلِيمٌ حَيِيٌّ سِتِّيرٌ يُحِبُّ الْحَيَاءَ وَالسِّتْرَ فَإِذَا اغْتَسَلَ أَحَدُكُمْ فَلْيَسْتَتِرْ."



٢٦٦- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا اغْتَسَلَ مِنَ الْجَنَابَةِ بَدَأَ فَغَسَلَ يَدَيْهِ، ثُمَّ تَوَضَّأَ كَمَا يَتَوَضَّأُ لِلصَّلاَةِ، ثُمَّ يُدْخِلُ أَصَابِعَهُ فِى الْمَاءِ، فَيُخَلِّلُ بِهَا أُصُولَ الشَّعَرِ ثُمَّ يَصُبُّ عَلَى رَأْسِهِ ثَلاَثَ غُرَفٍ بِيَدَيْهِ، ثُمَّ يُفِيضُ الْمَاءَ عَلَى جِلْدِهِ كُلِّهِ.

# HALÊN JINAN YÊN TEYBET
## EDET, ÇÊL Û ISTÎHAZE

٢٦٧- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "نَاوِلِينِى الْخُمْرَةَ مِنَ الْمَسْجِدِ." قَالَتْ: فَقُلْتُ إِنِّى حَائِضٌ. فَقَالَ: "إِنَّ حَيْضَتَكِ لَيْسَتْ فِى يَدِكِ."



٢٦٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كُنْتُ أَشْرَبُ وَأَنَا حَائِضٌ، ثُمَّ أُنَاوِلُهُ النَّبِيَّ ﷺ ، فَيَضَعُ فَاهُ عَلَى مَوْضِعِ فِيَّ، فَيَشْرَبُ، وَأَتَعَرَّقُ الْعَرْقَ وَأَنَا حَائِضٌ، ثُمَّ أُنَاوِلُهُ النَّبِيَّ ﷺ ، فَيَضَعُ فَاهُ عَلَى مَوْضِعِ فِيَّ.



**265.** Ji Ye'la (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) zilameke serê xwe li deverek vekirî de dişişt dît. (Bi lez) hilkete minberê, hemd û senayê Xwedê kir û got: *"Bêguman Xwedê Ezze we Celle helîm e, jixwefihêt e, tiştê eyb û qusûra dinixumîne û hez ji heyayê û ji nixumandinê dike. Vêca dema yekî ji we (xwest) serê xwe bişû bila xwe di deverek kes wî nebîne de bişû."*

(N406 Nesaî, Xusul we Teyemmum, 7)



**266.** Ji xanima Pêxember (s.) Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) ji cenabetê xwe dişişt, pêşî destê xwe dişişt, piştre weke desnimêja nimêjê destnimêj digirt, piştre tiliyê xwe têxiste nav avê de û pê wan pora xwe heta binî diferkand, piştre jî bi destê xwe sê kulm av li serê xwe dikir. Di dawiyê de av li tevî bedena xwe dikir.

(B248 Buxarî, Xusul, 1)

# HALÊN JINAN YÊN TEYBET
## EDET, ÇÊL Û ISTÎHAZE

**267.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Ji mizgeftê sicadeyê ji min re bîne.'* Min got: 'Ez di edetade me.' Li ser vêyekê Resûlê Xwedê got: *'Ketina edeta ne di destê te de ye!'*"

(M689 Muslim, Heyiz, 11)



**268.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Ez bi edet min tiştek vedixar, pişt re min dirêjî Pêxember (s.) dikir ewî devê xwe didanî ser dera devê min lêketî û vedixwar. Cardî ez bi edet min qetek goştê bi hestî gez dikir pişt re min dirêjê Resûlê Xwedê dikir ewî devê xwe didanî ser dera devê min lêketî û dixwar."

(M692 Muslim, Heyiz, 14; D259 Ebû Dawûd, Teharet, 102)



٢٦٩- عَنْ مَنْصُورِ ابْنِ صَفِيَّةَ أَنَّ أُمَّهُ حَدَّثَتْهُ أَنَّ عَائِشَةَ حَدَّثَتْهَا: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَتَّكِئُ فِى حَجْرِى وَأَنَا حَائِضٌ ثُمَّ يَقْرَأُ الْقُرْآنَ.



٢٧٠- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ فَاطِمَةَ بِنْتَ أَبِى حُبَيْشٍ سَأَلَتِ النَّبِيَّ ﷺ قَالَتْ: إِنِّى أُسْتَحَاضُ فَلاَ أَطْهُرُ، أَفَأَدَعُ الصَّلاَةَ؟ فَقَالَ: "لاَ، إِنَّ ذَلِكَ عِرْقٌ، وَلَكِنْ دَعِى الصَّلاَةَ قَدْرَ الْأَيَّامِ الَّتِى كُنْتِ تَحِيضِينَ فِيهَا، ثُمَّ اغْتَسِلِى وَصَلِّى."



٢٧١- عَنْ مُعَاذَةَ قَالَتْ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ فَقُلْتُ: مَا بَالُ الْحَائِضِ تَقْضِى الصَّوْمَ وَلاَ تَقْضِى الصَّلاَةَ؟ فَقَالَتْ: أَحَرُورِيَّةٌ أَنْتِ؟ قُلْتُ: لَسْتُ بِحَرُورِيَّةٍ، وَلَكِنِّى أَسْأَلُ، قَالَتْ: كَانَ يُصِيبُنَا ذَلِكَ فَنُؤْمَرُ بِقَضَاءِ الصَّوْمِ وَلاَ نُؤْمَرُ بِقَضَاءِ الصَّلاَةِ.

# NIMÊJ
## SITÛNA DÎN

٢٧٢- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ رضي الله عنه أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ : أَيُّ الْأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "الصَّلاَةُ لِوَقْتِهَا..."



**269.** Mensûr bin Sefiyye (r.) ji dayîka xwe rîwayet dike ku Aîşe (r.) jêre got: “Ez bi edetbûm Resûlê Xwedê (s.) pal dida ser singa min û Qur’an dixwend.”

(B297 Buxarî, Heyiz, 3; M693 Muslim, Heyiz, 15)



**270.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Fatime bint Ebî Hubeyş ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî û got: ‘Xwîna min nasekine ez tucara tahir nabim. Eceba ez dev ji nimêjê neberdim?’ Pêxember (s.) got: *‘Nexêr, ev xwîn xwîna demar e, ne ya edetê ye. Li gor rojên te edet didît (hesab bike) nimêjan terk bike, piştre xwe bişû û nimêj bike.’*”

(B325 Buxarî, Heyiz, 24; M753 Muslim, Heyiz, 62)



**271.** Ji Mu‘aze (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Min ji Aîşe pirsî: ‘Eceba çima jinka bi edet rojiyê qeza dike lê nimêjê qeza nake?’ Aîşe (r.) got: ‘Ma tu Herûriyî? (Xariciyê li gor me‘na Qur’anê ya herfî hukma dide) Min got: ‘Ez ne Herûrî me. Belê dipirsim.’ Aîşe got: ‘Ev dihate serê me jî, emrê me dihate kirin bi qezakirina rojiyê, lê emrê me nedihate kirin bi qezakirina nimêjê.’”

(M763 Muslim, Heyiz, 69; B321 Buxarî, Heyiz, 20)

# NIMÊJ
## SITÛNA DÎN

**272.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Zilamekî ji Resûlê Xwedê pirsî û got: ‘Xêra kîjan emelî/îbadetî zêdetir e?’ Resûlê Xwedê (s.) got: *‘Nimêja di wextê xwede tê kirin…’*”

(B7534 Buxarî, Tewhîd, 48)



٢٧٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَوَّلُ مَا يُحَاسَبُ بِهِ الْعَبْدُ الصَّلاَةُ..."



٢٧٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الصَّلاَةُ الْخَمْسُ، وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ، كَفَّارَةٌ لِمَا بَيْنَهُنَّ مَا لَمْ تُغْشَ الْكَبَائِرُ."



٢٧٥- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِفْتَاحُ الْجَنَّةِ الصَّلاَةُ..."



٢٧٦- عَنْ حَنْظَلَةَ الْكَاتِبِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ حَافَظَ عَلَى الصَّلَوَاتِ الْخَمْسِ رُكُوعِهِنَّ وَسُجُودِهِنَّ وَوُضُوئِهِنَّ وَمَوَاقِيتِهِنَّ وَعَلِمَ أَنَّهُنَّ حَقٌّ مِنْ عِنْدِ اللَّهِ دَخَلَ الْجَنَّةَ."

## NIMÊJKIRIN
### HEVDÎTINA EBDÎ REBBÊ XWE

٢٧٧- عَنْ عَلِيٍّ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِفْتَاحُ الصَّلاَةِ الطُّهُورُ، وَتَحْرِيمُهَا التَّكْبِيرُ، وَتَحْلِيلُهَا التَّسْلِيمُ."



**273.** Ji Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Roja Qiyametê) pêşiya her tiştî hesabê nimêjê ji ebdan tê xwestin."*

(N3996 Nesaî, Muharebe, 2)



**274.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pênc nimêj û du în, ji bilî gunehên mezin/kebair ji gunehên di neqeba wan de hatine kirin re kefaretin."*

(M550 Muslim, Teharet, 14)



**275.** Ji Cabir bin Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mifta cennetê nimêj e..."*

(T4 Tirmizî, Teharet, 1)



**276.** Ji katibê wehyê Henzele (bin Rebî') (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê pênc nimêjên (ferz) bi rukû û sicûd û destnimêj û bi wextên wan ve muhafeze bike (li ser wan dewam bike) û zanibe ku ew heq in û ji teref Xwedê ve ne, wê ew kes bikevê cennetê.'*"

(HM18535 Ibn Hanbel, IV, 266)

# NIMÊJKIRIN
## HEVDÎTINA EBDÎ REBBÊ XWE

**277.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mifta nimêjê paqijî ye/destnimêj e, destpêka wê tekbîr e û dawiya wê dayîna selamê ye."*

(D61 Ebû Dawûd, Teharet, 31)



٢٧٨- حَدَّثَنَا مَالِكٌ أَتَيْنَا إِلَى النَّبِيِّ ﷺ وَنَحْنُ شَبَبَةٌ مُتَقَارِبُونَ، فَأَقَمْنَا عِنْدَهُ عِشْرِينَ يَوْمًا وَلَيْلَةً، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ رَحِيمًا رَفِيقًا، فَلَمَّا ظَنَّ أَنَّا قَدِ اشْتَهَيْنَا أَهْلَنَا أَوْ قَدِ اشْتَقْنَا سَأَلَنَا عَمَّنْ تَرَكْنَا بَعْدَنَا فَأَخْبَرْنَاهُ قَالَ: "ارْجِعُوا إِلَى أَهْلِيكُمْ فَأَقِيمُوا فِيهِمْ وَعَلِّمُوهُمْ وَمُرُوهُمْ -وَذَكَرَ أَشْيَاءَ أَحْفَظُهَا أَوْ لاَ أَحْفَظُهَا- وَصَلُّوا كَمَا رَأَيْتُمُونِى أُصَلِّى، فَإِذَا حَضَرَتِ الصَّلاَةُ فَلْيُؤَذِّنْ لَكُمْ أَحَدُكُمْ وَلْيَؤُمَّكُمْ أَكْبَرُكُمْ."



٢٧٩- عَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ الْحَكَمِ السُّلَمِيِّ قَالَ: قَالَ ﴿رَسُولُ اللَّهِ ﷺ﴾: "إِنَّ هَذِهِ الصَّلاَةَ لاَ يَصْلُحُ فِيهَا شَيْءٌ مِنْ كَلاَمِ النَّاسِ، إِنَّمَا هُوَ التَّسْبِيحُ وَالتَّكْبِيرُ وَقِرَاءَةُ الْقُرْآنِ."



٢٨٠- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "إِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا صَلَّى يُنَاجِى رَبَّهُ..."



٢٨١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَقْرَبُ مَا يَكُونُ الْعَبْدُ مِنْ رَبِّهِ وَهُوَ سَاجِدٌ، فَأَكْثِرُوا الدُّعَاءَ."

**278.** Malik (bin Huweyris) (r.) dibêje: "Em çend xortê hevsal hatine cem Pêxemberê Xwedê (s.) û em bîst roj û bîst şevan li cemê man. Pêxemberê Xwedê (s.) bimerhamet û pir bişefqet bû. Dema zen bir ku me bîriya mala xwe kiriye an em dixazin êdî vegerin, ji me pirsî ka me ji ehlê xwe kê paş ve hîştîne. Me jî jê re vegot. Ewî got: *"Hûn vegerine nav ehlê xwe û di nav wan de bimînin. Hûn (tiştê li vir hîn bûyîn) bi wan bidine hînkirin û emrê wan bi (pêkanîna wan tişta) bikin."* – Tiştên dîtir jî gotin; hinek têne bîra min hinek jî nayêne bîra min- (û got): *"Weke we dîtî ez nimêj dikim hûn jî wisa bikin, dema wextê nimêjê hat bila yek ji we bang bide û mezintirînê we jî îmamtiya we bike."*

(B631 Buxarî, Ezan, 18)



**279.** Ji Muawiye bin el-Hekem es-Sulemî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şitexaliya di nêmijê de ne durust e. Di nimêjê de tenê tesbîh têne xwendin û tekbîr têne anîn û Qur'an tête xwendin."*

(M1199 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 33)



**280.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yek ji we nimêj dike, bi rastî ew bi Rebbê xwe re munacat (sohbetek teybet) dike..."*

(B413 Buxarî, Salat, 36)



**281.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nêzîktirîn wextê ku ebd tê de nêzîkê Xwedê ye, dema secdê ye. Bo vê yekê (dema hûn di secdê de bin) zêde dua bikin."*

(M1083 Muslim, Salat, 215)

# PÊNC WEXT NIMÊJÊN FERZ
## MÎRACA MUMINÎ

٢٨٢- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: كُنْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فِى سَفَرٍ... قَالَ: "رَأْسُ الْأَمْرِ الْإِسْلاَمُ وَعَمُودُهُ الصَّلاَةُ..."



٢٨٣- سَمِعْتُ جُنْدَبًا الْقَسْرِيَّ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ صَلَّى صَلاَةَ الصُّبْحِ فَهُوَ فِى ذِمَّةِ اللَّهِ..."



٢٨٤- عَنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الَّذِى تَفُوتُهُ صَلاَةُ الْعَصْرِ كَأَنَّمَا وُتِرَ أَهْلَهُ وَمَالَهُ."



٢٨٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "أَرَأَيْتُمْ لَوْ أَنَّ نَهْرًا بِبَابِ أَحَدِكُمْ، يَغْتَسِلُ فِيهِ كُلَّ يَوْمٍ خَمْسًا، مَا تَقُولُ ذَلِكَ يُبْقِى مِنْ دَرَنِهِ؟." قَالُوا: لاَ يُبْقِى مِنْ دَرَنِهِ شَيْئًا. قَالَ: "فَذَلِكَ مَثَلُ الصَّلَوَاتِ الْخَمْسِ، يَمْحُو اللَّهُ بِهَا الْخَطَايَا."



# PÊNC WEXT NIMÊJÊN FERZ
## MÎRACA MUMINÎ

**282.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Ez di seferekî de bi Resûlê Xwedê (s.) re bûm... Vêca got: *'Serê dîn Îslam e (bi gotina kelîma şehadetê re teslîmiyeta ji Xwedê re ye), û sitûna wî jî nimêj e.*"

(T2616 Tirmizî, Îman, 8; HM22366 Ibn Hanbel, V, 231)



**283.** Li gor ji Cundeb el-Qesrî (r.) hatî bihîstin Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê nimêja sibhê bike, ew di bin parastina Xwedê de ye."*

(M1494 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 262)



**284.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê nimêja esrê lê here, weke ku aila xwe û malê xwe winda kiribê ye."*

(B552 Buxarî, Mewakîtu's-salat, 14; M1417 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 200)



**285.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bîhîst digot: *"Ka hûn çi dibêjin! Heke şetek di ber deriyê yekî ji we re biherike û ew kes her roj pênc cara xwe tê de bişo, ma gelo wê ji qirêja wî kesî tiştekî bihêle?"* Gotin: "Nexêr, tiştek ji qirêja wî nahêle." Li ser vêyekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Iha pênc wext nimêj jî wisa ne, Xwedê bi wan gunehan dibe."*

(B528 Buxarî, Mewakîtu's-salat, 6)



٢٨٦- قَالَ سَعِيدُ بْنُ الْمُسَيَّبِ: إِنَّ أَبَا قَتَادَةَ بْنَ رَبْعِيٍّ أَخْبَرَهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "قَالَ اللَّهُ عَزَّ وجَلَّ: إِنِّى فَرَضْتُ عَلَى أُمَّتِكَ خَمْسَ صَلَوَاتٍ وَعَهِدْتُ عِنْدِى عَهْدًا أَنَّهُ مَنْ جَاءَ يُحَافِظُ عَلَيْهِنَّ لِوَقْتِهِنَّ أَدْخَلْتُهُ الْجَنَّةَ وَمَنْ لَمْ يُحَافِظْ عَلَيْهِنَّ فَلاَ عَهْدَ لَهُ عِنْدِى."

# NIMÊJA BI CEMAET
## BERÊXWEDANA BASKÎ XWEDÊ BIHEVRE

٢٨٧- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا رَأَيْتُمُ الرَّجُلَ يَتَعَاهَدُ الْمَسْجِدَ فَاشْهَدُوا لَهُ بِالْإِيمَانِ" فَإِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَقُولُ: ﴿إِنَّمَا يَعْمُرُ مَسَاجِدَ اللَّهِ مَنْ آمَنَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ وَأَقَامَ الصَّلاَةَ وَآتَى الزَّكَاةَ﴾ الْآيَةَ



٢٨٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "صَلاَةُ الْجَمَاعَةِ تَفْضُلُ صَلاَةَ الْفَذِّ بِسَبْعٍ وَعِشْرِينَ دَرَجَةً."



٢٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "حِينَ يَخْرُجُ الرَّجُلُ مِنْ بَيْتِهِ إِلَى مَسْجِدِهِ، فَرِجْلٌ تُكْتَبُ حَسَنَةً وَرِجْلٌ تَمْحُو سَيِّئَةً."



**286.** Li gor Seîd bin el-Museyyeb (r.) ji Ebû Qetade bin er-Rib'î (r.) rîwayet kirî Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle ferman kiriye: 'Min pênc nimêj li ser ummeta te ferz kirin û min soz daye xwe ku çi kesê ew di wext de kirî û heqê wan dayî ew muhafeze kirî were huzura min, ezê wî bixim cennetê de. Lê çi kesê ew muhafeze nekiribe û bi heq ew pêkneanîbe tu soza min ji wî re nîne.'"*

(D430 Ebû Dawûd, Salat, 9)

# NIMÊJA BI CEMAET
## BERÊXWEDANA BASKÎ XWEDÊ BIHEVRE

**287.** Ji Ebû Seîd (el-Xudrî) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke we şexsek dît ku her tim diçê mizjeftê, şehdebûnê bi îmana wî bidin. Lewra Xwedê Teala dibêje: "Bêguman kesên mizgeftên Xwedê (bi îbadet û taetê) îmar (ava) dikin ewên bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîn û yên nimêjê bi heqî dikin û zikatê didin in.'"*

(Tewbe, 9/18; T2617 Tirmizî, Îman, 8; ÎM802 Ibn Maceh, Mesacid, 19)



**288.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nimêja bicemaet tê kirin, ji nimêja bitenê tê kirin bîst û heft dereceya xêrtir e."*

(B645 Buxarî, Ezan, 30; M1477 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 249)



**289.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema kesek ji mala xwe diderkeve û berê xwe dide mizgeftê, bi qevzeka ku tavejê, jêre xêrek tê nivîsandin û bi qevzekî jî gunehek wî tê efûkirin."*

(N706 Nesaî, Mesacid, 14; HM8240 Ibn Hanbel, II, 320)



٢٩٠- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَمْسَحُ مَنَاكِبَنَا فِى الصَّلاَةِ وَيَقُولُ: "اسْتَوُوا وَلاَ تَخْتَلِفُوا، فَتَخْتَلِفَ قُلُوبُكُمْ..."



٢٩١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ غَدَا إِلَى الْمَسْجِدِ وَرَاحَ أَعَدَّ اللَّهُ لَهُ نُزُلَهُ مِنَ الْجَنَّةِ كُلَّمَا غَدَا أَوْ رَاحَ."

# ÎMAMETÎ
## REHBERTIYA JI CEMAETÊ RE

٢٩٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لِيُؤَذِّنْ لَكُمْ خِيَارُكُمْ وَلْيَؤُمَّكُمْ قُرَّاؤُكُمْ."



٢٩٣- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ الْأَنْصَارِيِّ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَؤُمُّ الْقَوْمَ أَقْرَؤُهُمْ لِكِتَابِ اللَّهِ، فَإِنْ كَانُوا فِى الْقِرَاءَةِ سَوَاءً، فَأَعْلَمُهُمْ بِالسُّنَّةِ... وَلاَ يُؤَمَّنَّ الرَّجُلُ الرَّجُلَ فِى سُلْطَانِهِ، وَلاَ يَقْعُدْ فِى بَيْتِهِ عَلَى تَكْرِمَتِهِ إِلاَّ بِإِذْنِهِ."



**290.** Ji Ebû Mesûd (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji bo nimêjê destê xwe li milê me dida û digot: *'Xwe rast bikin û tevlîhev nesekinin, qene dilê we jî tevlîhev nebe.'"*

(M972 Muslim, Salat, 122)



**291.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê sibeh û êvara here mizgeftê, di her çûyîna sibih û êvaran de Xwedê jêre di cennetê de cihekî hazir dike."*

(B662 Buxarî, Ezan, 37; M1524 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 285)

# ÎMAMETÎ
## REHBERTIYA JI CEMAETÊ RE

**292.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila qenctirê we ji we re muezzintiyê bikin û yê ji we Qur'anê baştir dizane jî ji we re îmamtiyê bike."*

(D590 Ebû Dawûd, Salat, 60)



**293.** Ji Ebû Mesûd el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav komekê de kesê Qur'anê rasttir dixwîne û baştir dizane bila îmametiyê bike. Heke di xwendin û zanebûna Qur'anê de wekhev bin, bila yê zanatirê bi sinnetê îmametiya wan bike... Bila tu kes îmametiya tu kesî di cihê bin pirsiyariya wî de neke û bila bêîzna wî di mala wî de li ser cîhê wî yê teybet jî rûnenê."*

(M1532 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 290)



٢٩٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِذَا صَلَّى أَحَدُكُمْ بِالنَّاسِ فَلْيُخَفِّفْ، فَإِنَّ فِيهِمُ السَّقِيمَ وَالضَّعِيفَ وَالْكَبِيرَ، ﴿فَإِذَا﴾ صَلَّى أَحَدُكُمْ لِنَفْسِهِ فَلْيُطَوِّلْ مَا شَاءَ."



٢٩٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْإِمَامُ ضَامِنٌ وَالْمُؤَذِّنُ مُؤْتَمَنٌ، اللَّهُمَّ أَرْشِدِ الْأَئِمَّةَ وَاغْفِرْ لِلْمُؤَذِّنِينَ."



٢٩٦- حَدَّثَنِى أَبُو هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "وَسِّطُوا الْإِمَامَ وَسُدُّوا الْخَلَلَ."



٢٩٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "إِنَّمَا جُعِلَ الْإِمَامُ لِيُؤْتَمَّ بِهِ، فَلاَ تَخْتَلِفُوا عَلَيْهِ، فَإِذَا رَكَعَ فَارْكَعُوا، وَإِذَا قَالَ سَمِعَ اللَّهُ لِمَنْ حَمِدَهُ، فَقُولُوا: رَبَّنَا لَكَ الْحَمْدُ، وَإِذَا سَجَدَ فَاسْجُدُوا، وَإِذَا صَلَّى جَالِسًا فَصَلُّوا جُلُوسًا أَجْمَعُونَ، وَأَقِيمُوا الصَّفَّ فِى الصَّلاَةِ، فَإِنَّ إِقَامَةَ الصَّفِّ مِنْ حُسْنِ الصَّلاَةِ."

**294.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji we îmametiya (komek) însan kir, bila nimêjê sivik bike. Lewra di nav wan de kesên nexweş, zeîf û kal hene. Belê dema nimêjê bi serê xwe bike, bila heta bixaze dirêj bike."*

(N824 Nesaî, Îmamet, 35)



**295.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îmam kefîl e (ji cemaeta pey wî nimêjdikin re) û muezzin jî (di derbarê wextê nimêjan de) pêbawer e. Ya Rebbî! Tu îmaman muweffeq bike û gunehên muezzinan efû bike."*

(T207 Tirmizî, Salat, 39)



**296.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li pey îmamî bi şiklê ku îmam bikeve nîvê sefê de sef bigirin û valehiyê (di nava sefan de) dagirin."*

(D681 Ebû Dawûd, Salat, 98)



**297.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îmam tenê ji bo ku cemaet li pey here heye. Wî çaxî (di nimêjê de) muxalifê wî hereket nekin. Dema ew çû rukûê hûn jî (pêre) herin rukûê, dema got: 'Semi'ellahu li men hemideh' bêjin: 'Rebbena leke'l-hemd'. Dema çû secdê hûn jî herin secdê. Heke îmam rûniştî nimêj kir, hûn jî tev bi hev re rûniştî nimêj bikin. Di nimêjê de sefa xwe rast bikin. Lewra rastkirina sefê xweşikahiya nimêjê ye."*

(B722 Buxarî, Ezan, 74)

# NIMÊJA ÎNÊ
## HEVDÎTINA HEFTANE

٢٩٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُ يَوْمٍ طَلَعَتْ عَلَيْهِ الشَّمْسُ يَوْمُ الْجُمُعَةِ فِيهِ خُلِقَ آدَمُ وَفِيهِ أُدْخِلَ الْجَنَّةَ وَفِيهِ أُخْرِجَ مِنْهَا وَلاَ تَقُومُ السَّاعَةُ إِلاَّ فِى يَوْمِ الْجُمُعَةِ."



٢٩٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنِ اغْتَسَلَ ثُمَّ أَتَى الْجُمُعَةَ فَصَلَّى مَا قُدِّرَ لَهُ ثُمَّ أَنْصَتَ حَتَّى يَفْرُغَ مِنْ خُطْبَتِهِ ثُمَّ يُصَلِّى مَعَهُ غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ الأُخْرَى وَفَضْلُ ثَلاَثَةِ أَيَّامٍ."



٣٠٠- عَنْ حَفْصَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "رَوَاحُ الْجُمُعَةِ وَاجِبٌ عَلَى كُلِّ مُحْتَلِمٍ."



٣٠١- عَنْ أَبِى الْجَعْدِ الضَّمْرِيِّ وَكَانَ لَهُ صُحْبَةٌ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَنْ تَرَكَ الْجُمُعَةَ ثَلاَثَ مَرَّاتٍ تَهَاوُنًا بِهَا طُبِعَ عَلَى قَلْبِه."



# NIMÊJA ÎNÊ
## HEVDÎTINA HEFTANE

**298.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirîn roja ku tavê lê dabe roja înê ye. Adem di wê rojê de hate afirandin û di wê rojê de kete cennetê û di wê rojê de jê hate derxistin. Bêguman wê Qiyamet jî di wê rojê de rabe."*

(M1977 Muslim, Cum'a, 18)



**299.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê serê xwe bişo, piştre were înê û wê nimêja hatî teyîn kirin bike, piştre guh bide (îmamî) heta xutbe xilas bibe, piştre pêre nimêj bike, wê ew gunehên di neqeba vê înê û îna werê de û yên di sê roj zêdetir de ne werine efû kirin."*

(M1987 Muslim, Cum'a, 26)



**300.** Ji xanima Pêxember Hefse (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çûyîna nimêja înê li ser herkesê balix ferz e."*

(N1372 Nesaî, Cum'a, 2)



**301.** Ji Ebu'l-Ce'd ed-Demrî (r.) – sehabî ye- hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê ji bêxîretî û ihmalî sê cara li peyhev nimêja înê terk bike, wê qelbê wî were muhrkirin."*

(İM1125 Ibn Maceh, Îqametu's-salavat, 93)



٣٠٢- حَدَّثَنَا كَثِيرُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ عَوْفٍ الْمُزَنِيُّ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ فِى الْجُمُعَةِ سَاعَةً لاَ يَسْأَلُ اللَّهَ الْعَبْدُ فِيهَا شَيْئًا إِلاَّ آتَاهُ اللَّهُ إِيَّاهُ."

# XUTBE
## BANGKIRINA GEL JI MÎNBERÊ

٣٠٣- عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ قَالَ: كَانَتْ صَلاَةُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَصْدًا وَخُطْبَتُهُ قَصْدًا، يَقْرَأُ آيَاتٍ مِنَ الْقُرْآنِ وَيُذَكِّرُ النَّاسَ.



٣٠٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ نَحْمَدُهُ وَنَسْتَعِينُهُ وَنَعُوذُ بِاللَّهِ مِنْ شُرُورِ أَنْفُسِنَا وَمِنْ سَيِّئَاتِ أَعْمَالِنَا، مَنْ يَهْدِهِ اللَّهُ فَلاَ مُضِلَّ لَهُ، وَمَنْ يُضْلِلْ فَلاَ هَادِىَ لَهُ، وَأَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ..."



٣٠٥- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ قَالَ سَمِعْتُ ابْنَ عَبَّاسٍ قَالَ: خَرَجْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ يَوْمَ فِطْرٍ أَوْ أَضْحَى فَصَلَّى ثُمَّ خَطَبَ ثُمَّ أَتَى النِّسَاءَ فَوَعَظَهُنَّ وَذَكَّرَهُنَّ وَأَمَرَهُنَّ بِالصَّدَقَةِ."



**302.** Kesîr bin Ebdillah bin 'Emr bin Ewf el-Muzenî (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman di Roja Înê de demek heye ku ebdê Misilman di wî demî de tiştek ji Xwedê bixaze mitleqa wê Xwedê daxaza wî jêre pêkbîne."*

(T490 Tirmizî, Cum'a, 2)

# XUTBE
## BANGKIRINA GEL JI MÎNBERÊ

**303.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) (di serê xutbê de) wiha digot: *"Hemd ji Xwedê re ye. Em hemdê Wî dikin, ji Wî alîkariyê dixazin, em ji şerrê nefsa xwe û ji karên me yên xirab xwe dispêrine Xwedê. Xwedê kî hîdayet bike keseke wî ji rê derêxe tuneye, kî ji rê derêxe keseke wî hîdayet bike tuneye. Ez şehde didim ku ji bilî Xwedê Ellah, tu xweda tune hin, Ew tenê ye, tu şirîkê Wî nînin û Muhemmed jî ebdê Wî û resûlê Wî ye."*

(İM1893 Ibn Maceh, Nîkah, 19; M2007 Muslim, Cum'a, 45)



**304.** Cabir bin Semure (r.) gotiye: "Nimêja Resûlê Xwedê (s.) û xutba wî edetî bû (ne kurt ne jî dirêj). Çend ayet ji Qur'anê dixwendin û nesîhet li mirovan dikir."

(D1101 Ebû Dawûd, Salat, 221, 223)



**305.** Ji Ebdurrehman (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Ibn Ebbas bihîst digot: "Ez bi Resûlê Xwedê (s.) re roja Eyda Remezanê an Eyda Qurbanê (bo nimêja eydê) derketim. Vêca Resûlê Xwedê (s.) pêşî nimêj kir, piştre xutbe xwend. Piştre jî çû cem jinan, nesîhet li wan jî kirin û tiştin dî ji wan re got û emrê wan bi dana sedeqeyan kir."

(B975 Buxarî, 'Îdeyn, 16)



٣٠٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّهِ ﷺ : "مَنْ تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ، ثُمَّ أَتَى الْجُمُعَةَ فَاسْتَمَعَ وَأَنْصَتَ، غُفِرَ لَهُ مَا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجُمُعَةِ، وَزِيَادَةُ ثَلاثَةِ أَيَّامٍ، وَمَنْ مَسَّ الْحَصَى فَقَدْ لَغَا."

# NIMÊJA CENAZE
## WEZÎFA DAWÎ JI BO BIRAYÊ MUMIN

٣٠٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لِلْمُؤْمِنِ عَلَى الْمُؤْمِنِ سِتُّ خِصَالٍ: يَعُودُهُ إِذَا مَرِضَ، وَيَشْهَدُهُ إِذَا مَاتَ، وَيُجِيبُهُ إِذَا دَعَاهُ، وَيُسَلِّمُ عَلَيْهِ إِذَا لَقِيَهُ، وَيُشَمِّتُهُ إِذَا عَطَسَ، وَيَنْصَحُ لَهُ إِذَا غَابَ أَوْ شَهِدَ."



٣٠٨- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ شَهِدَ الْجَنَازَةَ حَتَّى يُصَلَّى فَلَهُ قِيرَاطٌ وَمَنْ شَهِدَ حَتَّى تُدْفَنَ كَانَ لَهُ قِيرَاطَانِ." قِيلَ: وَمَا الْقِيرَاطَانِ؟ قَالَ: "مِثْلُ الْجَبَلَيْنِ الْعَظِيمَيْنِ."



٣٠٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا صَلَّيْتُمْ عَلَى الْمَيِّتِ فَأَخْلِصُوا لَهُ الدُّعَاءَ."



**306.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê destnimêj bigire û destnimêja xwe xweşik bi îhtîmam bigire, piştre werê înê û guh bide (xutbê) û bêdeng be, wê ew gunehên di neqeba vê înê û îna werê de û yên di sê roj zêdetir de ne werine efû kirin. Çi kesê (guh nede xutbê) bi zixura ve mijûl bibe bêguman ewî xêra xwe betal kiriye."*

(M1988 Muslim, Cum'a, 27)

# NIMÊJA CENAZE
## WEZÎFA DAWÎ JI BO BIRAYÊ MUMIN

**307.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heqê muminî li ser muminî şeş in: Ku nexweş ket wî ziyaret bike, ku mir beşdarê cenazeyê wî bibe, ku ew de'wet kir qebûl bike, ku liqayî hat selam bidiyê, ku pişikî, dua xweşiyê jêre bike, ku li cemê be an jî jê dûr be pêre durust be."*

(T2737 Tirmizî, Edeb, 1; N1940 Nesaî, Cena'iz, 52)



**308.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê beşdarî cenazeyekî bibe heta li ser nimêj bike, jêre qîratek heye û kesê beşdar bibe heta were defn kirin, jêre du qîrat hene."* Jê hate pirsîn: "Ma du qîrat çine?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Weke du çiyayên mezin in."*

(B1325 Buxarî, Cena'iz, 58; M2189 Muslim, Cena'iz 52)



**309.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema we nimêja cenaze li ser mirî kir, jêre duayan ji can û dil bikin."*

(D3199 Ebû Dawûd, Cena'iz, 54, 56)



٣١٠- عَنْ عَوْفِ بْنِ مَالِكٍ الْأَشْجَعِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَصَلَّى عَلَى جَنَازَةٍ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ اغْفِرْ لَهُ وَارْحَمْهُ، وَاعْفُ عَنْهُ وَعَافِهِ، وَأَكْرِمْ نُزُلَهُ، وَوَسِّعْ مُدْخَلَهُ، وَاغْسِلْهُ بِمَاءٍ وَثَلْجٍ وَبَرَدٍ، وَنَقِّهِ مِنَ الْخَطَايَا كَمَا يُنَقَّى الثَّوْبُ الْأَبْيَضُ مِنَ الدَّنَسِ، وَأَبْدِلْهُ دَارًا خَيْرًا مِنْ دَارِهِ، وَأَهْلاً خَيْرًا مِنْ أَهْلِهِ، وَزَوْجًا خَيْرًا مِنْ زَوْجِهِ، وَقِهِ فِتْنَةَ الْقَبْرِ وَعَذَابَ النَّارِ."

# NIMÊJA NAFÎLE
## SECDEYÊN KU NÊZÎKÊ XWEDÊ DIKIN

٣١١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَوَّلُ مَا يُحَاسَبُ بِهِ الْعَبْدُ صَلاَتُهُ فَإِنْ كَانَ أَكْمَلَهَا وَإِلاَّ قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: انْظُرُوا لِعَبْدِى مِنْ تَطَوُّعٍ فَإِنْ وُجِدَ لَهُ تَطَوُّعٌ قَالَ: أَكْمِلُوا بِهِ الْفَرِيضَةَ."



٣١٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ قَالَ مَنْ عَادَى لِى وَلِيًّا فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِى بِشَىْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُ عَلَيْهِ، وَمَا يَزَالُ عَبْدِى يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أُحِبَّهُ، فَإِذَا أَحْبَبْتُهُ كُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِى يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِى يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِى يَبْطُشُ بِهَا وَرِجْلَهُ الَّتِى يَمْشِى بِهَا، وَإِنْ سَأَلَنِى لَأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنِ اسْتَعَاذَنِى لَأُعِيذَنَّهُ..."



**310.** Ji 'Ewf bin Malik el-Eşce'î (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) li ser cenazeyek nimêj dikir min jê bihîst digot: *"Ya Rebbî! Tu wî bibexşîne, rehmê lê bike, wî efu bike, wî hîmaye bike, li warê wî (yê nû) îkrama wî bike, tirba wî jêre fereh bike. Ewî bi av û berf û teyrûkê bişû, weke ku cilê sipî ji qirêjê paqij dibe Tu jî wî ji gunehan wisa paqij bike. Xaniyek ji xaniyê wî yê vir çêtir, malbatek ji malbata wî ya vir çêtir û xanimeka ji xanima wî ya vir çêtir bidiyê. Ewî ji ezabê qebrê û ji ezabê êgir biparêze."*

(M2234 Muslim, Cena'iz, 86)

# NIMÊJA NAFÎLE
## SECDEYÊN KU NÊZÎKÊ XWEDÊ DIKIN

**311.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Roja Qiyametê) pêşiya her tiştî hesabê nimêjê ji ebdan tê xwestin. Heke ew bi temamî kiribe (çi başe!) Belê (ferzên wî) ne tamambin, Xwedê Ezze we Celle dibêje: 'Li nimêjê ebdê min yê nafîle meyze bikin.' Heke nimejên wî yê nafîle hebin, Xwedê dibêje: 'Ferzên wî bi wan temam bikin.'"*

(N468 Nesaî, Salat, 9)



**312.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Teala ferman kiriye: 'Kî neyartiya dostekî min bike ez jêre îlana herbê dikim. Ebdê min ji tiştên ku min li ser wî ferz kirîn bi tişteka dîtir ku hez jê bikim xwe nêzî min nekiriye. Ebdê min bi ibadetên nafîle xwe nêzî min dike heta ku ez jê hez dikim. (dema min jê hez kir) Êdî ez dibime guhê wî yê pê dibihîze, çavên wî yê pê dibîne, destê wî yê pê digire, lingê wî yê pê dimeşe. Heke ji min bixwaze ezê mitleqa daxaza wî pêkbînim, heke xwe bispêre min mitleqa ezê wî siperim."*

(B6502 Buxarî, Rîqaq, 38)



٣١٣- عَنْ عَبْدِ اللّٰهِ بْنِ شَقِيقٍ قَالَ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ عَنْ صَلاَةِ رَسُولِ اللّٰهِ ﷺ ، عَنْ تَطَوُّعِهِ؟ فَقَالَتْ: كَانَ يُصَلِّى فِى بَيْتِى قَبْلَ الظُّهْرِ أَرْبَعًا، ثُمَّ يَخْرُجُ فَيُصَلِّى بِالنَّاسِ، ثُمَّ يَدْخُلُ فَيُصَلِّى رَكْعَتَيْنِ، وَكَانَ يُصَلِّى بِالنَّاسِ الْمَغْرِبَ ثُمَّ يَدْخُلُ فَيُصَلِّى رَكْعَتَيْنِ، وَيُصَلِّى بِالنَّاسِ الْعِشَاءَ، وَيَدْخُلُ بَيْتِى فَيُصَلِّى رَكْعَتَيْنِ، وَكَانَ يُصَلِّى مِنَ اللَّيْلِ تِسْعَ رَكَعَاتٍ، فِيهِنَّ الْوِتْرُ...



٣١٤- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ وَأَبِى هُرَيْرَةَ قَالاَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "إِذَا أَيْقَظَ الرَّجُلُ أَهْلَهُ مِنَ اللَّيْلِ فَصَلَّيَا أَوْ صَلَّى رَكْعَتَيْنِ جَمِيعًا كُتِبَا فِى الذَّاكِرِينَ وَالذَّاكِرَاتِ."



٣١٥- عَنْ أَبِى سَلَمَةَ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ أَنَّهُ سَأَلَ عَائِشَةَ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهَا : كَيْفَ كَانَتْ صَلاَةُ رَسُولِ اللّٰهِ ﷺ فِى رَمَضَانَ؟ فَقَالَتْ: مَا كَانَ يَزِيدُ فِى رَمَضَانَ، وَلاَ فِى غَيْرِهَا عَلَى إِحْدَى عَشْرَةَ رَكْعَةً، يُصَلِّى أَرْبَعًا فَلاَ تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّى أَرْبَعًا فَلاَ تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّى ثَلاَثًا...

## NIMÊJA TERAWÎHA
### IHYAKIRINA ŞEVÊN REMEZANÊ

٣١٦- عَنْ زَيْدِ بْنِ ثَابِتٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ ... فَقَالَ: "مَا زَالَ بِكُمُ الَّذِى رَأَيْتُ مِنْ صَنِيعِكُمْ، حَتَّى خَشِيتُ أَنْ يُكْتَبَ عَلَيْكُمْ، وَلَوْ كُتِبَ عَلَيْكُمْ مَا قُمْتُمْ بِهِ، فَصَلُّوا أَيُّهَا النَّاسُ فِى بُيُوتِكُمْ، فَإِنَّ أَفْضَلَ صَلاَةِ الْمَرْءِ فِى بَيْتِهِ، إِلاَّ ﴿الصَّلاَةَ﴾ الْمَكْتُوبَةَ."



**313.** Ji Ebdullah bin Şeqîq (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Aîşe (r.)'yê nafîleyên Pêxember (s.) pirsîn. Ewê got: 'Resûlê Xwedê (s.) di mala min de nimêj dikir: Berî nimêja nîvro di mala min de çar riket (nafîle) dikir, piştre diderket (diçû mizgeftê) bi mirovan re nimêja nîvro dikir, piştre dihat dikete malê û du riket (nafîle) dikir. Nimêja Mexribê (li mizgeftê) bi mirovan re dikir, piştre dihate malê du riket (nafîle) dikir. Bi mirovan re nimêja işayê dikir û dihat dikete mala min du riket (nafîle) nimêj dikir. Bi şev digel witrê neh riket dikir..."

(M1699 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 105; D1251 Ebû Dawûd, Tetawwu', 1)



**314.** Ji Ebû Seîd û ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema zilamek xanima xwe şev şiyarke û herdû bi hev re nimêj bikin an jî du reket bihevre bikin, di nav zakirîn û zakîratan (Zilam û jinên Xwedê pir zikr dikin) de têne nivîsandin."*

(D1309 Ebû Dawûd, Tetawwu', 18)



**315.** Ebû Seleme bin Ebdurrahman (r.), ji Hz. Âîşe (r.)'yê dipirsê: "Nimêja Pêxember (s.) di Remezanê de çewa bû?" Aîşe (r.) got: "Resûlê Xwedê (s.) (bi şev) ne di Remezanê de ne jî di mehên dîtir de ji yazdeh riketan zêdetir nedikir. Pêşî çar riket dikirin çiqas dirêj û xweşik dikir nepirse!, Piştre çar riket dikirin çiqas dirêj û xweşik dikir nepirse!, piştre jî sisê dikir..."

(B2013 Buxarî, Salatu't-terawîh, 1; M1723 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 125)

# NIMÊJA TERAWÎHA
## IHYAKIRINA ŞEVÊN REMEZANÊ

**316.** Ji Zeyd b. Sabit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) (Ji wan kesên dixwestin ku nimêja terawîha li mizgeftê bikin re) gotiye: *"Gelî mirovno! Di derbarê kirina vê nimêjê de min daxaziyek zêde li ba we dît heta ez tirsiyam ku li ser we ferz bibe. Heke ferz bibe hûnê nekaribin pêkbînin. Vêca hûn vê nimêjê li mala xwe bikin. Lewra ji bilî nimêja ferz xêrtirîn nimêj ewa ku mirov li mala xwe dike ye."*

(B7290 Buxarî, I'tîsam, 3)



٣١٧- عَنْ أَبِى سَلَمَةَ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ أَنَّهُ سَأَلَ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا كَيْفَ كَانَتْ صَلاَةُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِى رَمَضَانَ؟ قَالَت: مَا كَانَ يَزِيدُ فِى رَمَضَانَ، وَلاَ فِى غَيْرِه عَلَى إِحْدَى عَشْرَةَ رَكْعَةً، يُصَلِّى أَرْبَعًا فَلاَ تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّى أَرْبَعًا فَلاَ تَسْأَلْ عَنْ حُسْنِهِنَّ وَطُولِهِنَّ، ثُمَّ يُصَلِّى ثَلاَثًا...“



٣١٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”مَنْ صَامَ رَمَضَانَ إِيمَانًا وَاحْتِسَابًا غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ، وَمَنْ قَامَ لَيْلَةَ الْقَدْرِ إِيمَانًا وَاحْتِسَابًا غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ.“

# WEXTÊN MIBAREK
## FIRSETÊN BIDESTKIRINA RIZAYA XWEDÊ

٣١٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”مَنْ قَامَ لَيْلَةَ الْقَدْرِ إِيمَانًا وَاحْتِسَابًا غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ، وَمَنْ صَامَ رَمَضَانَ إِيمَانًا وَاحْتِسَابًا غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ.“



٣٢٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”مَا مِنْ أَيَّامٍ الْعَمَلُ الصَّالِحُ فِيهِنَّ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ مِنْ هَذِهِ الْأَيَّامِ الْعَشْرِ.“



**317.** Ebû Seleme bin Ebdurrahman (r.), ji Hz. Aîşe (r.)'yê dipirsê: "Nimêja Pêxember (s.) di Remezanê de çewa bû?" Aîşe (r.) got: "Resûlê Xwedê (s.) (bi şev) ne di Remezanê de ne jî di mehên dîtir de ji yazdeh riketan zêdetir nedikir. Pêşî çar riket dikirin çiqas dirêj û xweşik dikir nepirse!, Piştre çar riket dikirin çiqas dirêj û xweşik dikir nepirse!, piştre jî sê riket dikir..."

(B2013 Buxarî, Salatu't-terawîh, 1)



**318.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê bi bawerî û tenê hêviya xêrê ji Xwedê bike rojiya Remezanê bigire, gunehên wî yên buhûrîn têne efûkirin. Çi kesê bi bawerî û tenê hêviya xêrê ji Xwedê bike şeva Leyletu'l-Qedrê ihya bike, gunehên wî yên buhûrîn têne efûkirin."*

(B2014 Buxarî, Fadlu leyleti'l-qedr, 1)

# WEXTÊN MIBAREK
## FIRSETÊN BIDESTKIRINA RIZAYA XWEDÊ

**319.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê bi bawerî û tenê hêviya xêrê ji Xwedê bike şeva Leyletu'l-Qedrê ihya bike, gunehên wî yên buhûrîn têne efûkirin. Çi kesê bi bawerî û tenê hêviya xêrê ji Xwedê bike rojiya Remezanê bigire, gunehên wî yên buhûrîn têne efûkirin."*

(B1901 Buxarî, Sewm, 6)



**320.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Awayê ku Xwedê hez ji kirina emelê salih di dehkê Eyda Haciyan de dike hez ji tu wextên dî nake."*

(T757 Tirmizî, Sewm, 52; İM1727 Ibn Maceh, Sıyam, 39)



٣٢١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: ‟خَيْرُ يَوْمٍ طَلَعَتْ عَلَيْهِ الشَّمْسُ يَوْمُ الْجُمُعَةِ...‟



٣٢٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: ‟يَتَنَزَّلُ رَبُّنَا تَبَارَكَ وَتَعَالَى كُلَّ لَيْلَةٍ إِلَى السَّمَاءِ الدُّنْيَا حِينَ يَبْقَى ثُلُثُ اللَّيْلِ الْآخِرُ يَقُولُ: مَنْ يَدْعُونِى فَأَسْتَجِيبَ لَهُ، مَنْ يَسْأَلُنِى فَأُعْطِيَهُ، وَمَنْ يَسْتَغْفِرُنِى فَأَغْفِرَ لَهُ.‟



٣٢٣- عَنْ عُقْبَةَ بْنَ عَامِرٍ الْجُهَنِيَّ يَقُولُ: ثَلَاثُ سَاعَاتٍ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَنْهَانَا أَنْ نُصَلِّيَ فِيهِنَّ، أَوْ أَنْ نَقْبُرَ فِيهِنَّ مَوْتَانَا: حِينَ تَطْلُعُ الشَّمْسُ بَازِغَةً حَتَّى تَرْتَفِعَ، وَحِينَ يَقُومُ قَائِمُ الظَّهِيرَةِ حَتَّى تَمِيلَ الشَّمْسُ، وَحِينَ تَضَيَّفُ الشَّمْسُ لِلْغُرُوبِ حَتَّى تَغْرُبَ.

## QEZAKIRINA NIMÊJAN
### TELAFÎKIRINA NIMÊJÊN NEKIRÎ

٣٢٤- عَنِ الْوَلِيدِ بْنِ الْعَيْزَارِ أَنَّهُ سَمِعَ أَبَا عَمْرٍو الشَّيْبَانِيَّ قَالَ: حَدَّثَنِى صَاحِبُ هَذِهِ الدَّارِ –وَأَشَارَ إِلَى دَارِ عَبْدِ اللَّهِ– قَال: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ: أَيُّ الْأَعْمَالِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ؟ قَالَ: ‟الصَّلَاةُ عَلَى وَقْتِهَا‟ قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: ‟ثُمَّ بِرُّ الْوَالِدَيْنِ‟ قُلْتُ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: ‟ثُمَّ الْجِهَادُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ.‟



**321.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirîn Roja ku tavê lê dabe Roja Înê ye.*

(M1977 Muslim, Cum'a, 18)



**322.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rebbê me Tebareke we Teala her şev dema sêyeka şevê ya dawî dimîne tête asîmanê dinyayê û wiha ferman dike: 'Kî heye dua bike ez duaya wî qebûl bikim, kî heye ji min bixaze ez bidime, kî heye daxaza efûkirinê ji min bike ez wî efû bikim?"*

(B6321 Buxarî, De'ewat, 14)



**323.** 'Uqbe bin 'Amir el-Cuhenî (r.) gotiye: "Sê wext hene Resûlê Xwedê (s.) men'a me dikir ku em di wan de nimêj bikin an jî cenazeyên xwe veşêrin: Wextê tav dest bi derketinê dike heta bilind bibe; wextê tav tam di nîvê asîmanande be heta baskî rojava ve bitewihê; wextê tav dike here ava heta tam winda bibe."

(M1929 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 293)

## QEZAKIRINA NIMÊJAN
### TELAFÎKIRINA NIMÊJÊN NEKIRÎ

**324.** Ji el-Welîd bin el-Eyzar (r.) hatiye ragihandin ku ji Ebû 'Emr eş-Şeybanî bihîst digot: "Xwediyê vî xaniyî –îşareta bal xaniyê Ebdullah ve kir- ji min re got: 'Min ji Resûlê Xwedê pirsî: Xwedê zehftir hez ji kîjan emelî dike?" Resûlê Xwedê (s.) got: *'Kirina nimêjê di wextê wê de.'* Min got: 'Piştre kîjan?' Got: *'Qencî kirina li dê û bavan.'* Min got: 'Piştre kîjan?' Got: *'Cîhada di rêya Xwedê de.'"*

(M254 Muslim, Îman, 139; B5970 Buxarî, Edeb, 1)



٣٢٥- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”مَنْ نَسِيَ صَلاَةً فَلْيُصَلِّ إِذَا ذَكَرَهَا، لاَ كَفَّارَةَ لَهَا إِلاَّ ذَلِكَ...



٣٢٦- حَدَّثَنِى أَبُو قَتَادَةَ الْأَنْصَارِيُّ فَارِسُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: ... قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”مَنْ كَانَ مِنْكُمْ يَرْكَعُ رَكْعَتَيِ الْفَجْرِ فَلْيَرْكَعْهُمَا.“



٣٢٧- عَنْ أَبِى قَتَادَةَ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: ... ”أَمَا إِنَّهُ لَيْسَ فِى النَّوْمِ تَفْرِيطٌ، إِنَّمَا التَّفْرِيطُ عَلَى مَنْ لَمْ يُصَلِّ الصَّلاَةَ حَتَّى يَجِيءَ وَقْتُ الصَّلاَةِ الْأُخْرَى، فَمَنْ فَعَلَ ذَلِكَ فَلْيُصَلِّهَا حِينَ يَنْتَبِهُ لَهَا، فَإِذَا كَانَ الْغَدُ فَلْيُصَلِّهَا عِنْدَ وَقْتِهَا...“

# MIZGEFT Û CAMÎ
## XANIYÊN XWEDAYÊ KU ER-REHMAN E

٣٢٨- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”جُعِلَتْ لِيَ الْأَرْضُ مَسْجِدًا وَطَهُورًا أَيْنَمَا أَدْرَكَ رَجُلٌ مِنْ أُمَّتِى الصَّلاَةَ صَلَّى.“



**325.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê nimêjekî jibîr bike, dema hate bîra wî bila nimêj bike. Lewra kefaretê wê tenê ev e..."*

(B597 Buxarî, Mewaqîtu's-salat, 37; M1566 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 314)



**326.** Ji suwariyê Pêxember Ebû Qetade el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji hewe herdu reket sinnetê nimêja sibihê daîmî dike (dema bimîne qezayê) bila herduka bike."*

(D438 Ebû Dawûd, Salat, 11)



**327.** Ji Ebû Qetade (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji mere xutbeyek xwend û got: '*... Şiyar bin! Bêguman jiber xewdemanê (terka nimêjê) ne qusûr e, esas qusûr ji wî kesê nimêj nekirî heta kete wextê nimêja dîtir de ye. Vêca çi kesê (di xew de mayî) nimêj nekirî, dema şiyar bibe bila wê nimêjê bike û roja dîtir bila nimêja xwe di wextê wê de bike.*"

(M1562 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 311)

# MIZGEFT Û CAMÎ
## XANIYÊN XWEDAYÊ KU ER-REHMAN E

**328.** Ji Cabir bin Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rûyê erdê ji min re bûye mizgeft û paqij. Ji ummeta min çi kesê bikeve wextê nimêjê de, li kûderê be (jî) kare nimêj bike."*

(N737 Nesaî, Mesacid, 42)



٣٢٩- أَنَّ عُثْمَانَ بْنَ عَفَّانَ أَرَادَ بِنَاءَ الْمَسْجِدِ فكَرِهَ النَّاسُ ذَلِكَ وَأَحَبُّوا أَنْ يَدعَهُ عَلَى هَيْئَتِهِ فَقَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ بَنَى مَسْجِدًا لِلَّهِ بَنَى اللَّهُ لَهُ فِى الْجَنَّةِ مِثْلَهُ."



٣٣٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا تَوَطَّنَ رَجُلٌ مُسْلِمٌ الْمَسَاجِدَ لِلصَّلاَةِ وَالذِّكْرِ إِلاَّ تَبَشْبَشَ اللَّهُ لَهُ كَمَا يَتَبَشْبَشُ أَهْلُ الْغَائِبِ بِغَائِبِهِمْ إِذَا قَدِمَ عَلَيْهِمْ."



٣٣١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: أَمَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِبنَاءِ الْمَسَاجِدِ فِى الدُّورِ وَأَنْ تُنَظَّفَ وَتُطَيَّبَ.



٣٣٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَنْ أَكَلَ ثُومًا أَوْ بَصَلاً، فَلْيَعْتَزِلْنَا -أَوْ لِيَعْتَزِلْ مَسْجِدَنَا-، وَلْيَقْعُدْ فِى بَيْتِهِ."

**329.** Osman bin Effan (r.) xwest mizgeftê ji nûve ava bike. Belê ev li mirovan xweş nehat û xwestin ku mizgeftê bihêlê li ser halê wê yê hazir. Li ser vêyekê Osman (r.) got: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Çi kesê mizgeftekî ji bo Xwedê ava bike, wê Xwedê (qesrek) weke wê mizgeftê di cennetê de jê re ava bike."*

(M7471 Muslim, Zuhd we reqa'îq, 44)



**330.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çawa ku malbatek bi vegera ferdê xwe yê di xurbetê de bi keyf û şa dibe wisa Xwedê jî bi wî şexsê Misilmanê ku mizgeft ji bo nimêj û zikrê ji xwe re kiriye wargeh bi keyf û şa dibe."*

(İM800 Ibn Maceh, Mesacid, 19)



**331.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) emir da ku di taxan de mizgeft werin avakirin û ev mizgeft werin paqij kirin û bêhna xweş lê were werkirin."

(D455 Ebû Dawûd, Salat, 13; T594 Tirmizî, Cum'a, 64)



**332.** Ji Cabir bin Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê sîr an pîvaz xaribe, bila ji me- an ji mizgefta me- dûr keve û bila li mala xwe rûnê."*

(B7359 Buxarî, I'tîsam, 24)

# EZAN
## GAZIYA YEKEM BO HUZÛRÊ

٣٣٣- أَنَّ ابْنَ عُمَرَ كَانَ يَقُولُ: كَانَ الْمُسْلِمُونَ حِينَ قَدِمُوا الْمَدِينَةَ يَجْتَمِعُونَ فَيَتَحَيَّنُونَ الصَّلاَةَ لَيْسَ يُنَادَى لَهَا، فَتَكَلَّمُوا يَوْمًا فِى ذَلِكَ، فَقَالَ بَعْضُهُمْ: اتَّخِذُوا نَاقُوسًا مِثْلَ نَاقُوسِ النَّصَارَى. وَقَالَ بَعْضُهُمْ: بَلْ بُوقًا مِثْلَ قَرْنِ الْيَهُودِ. فَقَالَ عُمَرُ: أَوَلاَ تَبْعَثُونَ رَجُلاً يُنَادِى بِالصَّلاَةِ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا بِلاَلُ! قُمْ فَنَادِ بِالصَّلاَةِ."



٣٣٤- عَنْ أَبِى عُمَيْرِ بْنِ أَنَسٍ عَنْ عُمُومَةٍ لَهُ مِنَ الأَنْصَارِ قَالَ: اهْتَمَّ النَّبِيُّ لِلصَّلاَةِ كَيْفَ يَجْمَعُ النَّاسَ لَهَا، فَقِيلَ لَهُ: انْصِبْ رَايَةً عِنْدَ حُضُورِ الصَّلاَةِ فَإِذَا رَأَوْهَا آذَنَ بَعْضُهُمْ بَعْضًا فَلَمْ يُعْجِبْهُ ذَلِكَ... فَانْصَرَفَ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ زَيْدِ بْنِ عَبْدِ رَبِّهِ وَهُوَ مُهْتَمٌّ لِهَمِّ رَسُولِ اللَّهِ –ﷺ– فَأُرِيَ الأَذَانَ فِى مَنَامِهِ. قَالَ: فَغَدَا عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَأَخْبَرَهُ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنِّى لَبَيْنَ نَائِمٍ وَيَقْظَانَ إِذْ أَتَانِى آتٍ فَأَرَانِى الأَذَانَ ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا بِلاَلُ! قُمْ فَانْظُرْ مَا يَأْمُرُكَ بِهِ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ زَيْدٍ فَافْعَلْهُ."



# EZAN
## GAZIYA YEKEM BO HUZÛRÊ

**333.** Ibn Umer (r.) dibêje: "Piştî ku Misilman hatin Medînê, li hev kom dibûn û diman hêviya wextê nimêjê û ji bo nimêjê bang nedihate hildêran. Vêca rojekî di derheqê vê de şitexilîn: Hinekan gotin: 'Emê weke Filehan li çanê din', hinekan gotin: 'Emê weke Cihûyan boriyek weke sitirhê heywana bi destxin (û pê wê îlan kin)'. Umer jî got: 'Ma çima hûn zilamek ku gaziyê nimêjê bike naşiyênin?.' Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ey Bilal! Rabe gaziya nimêjê bike.'*"

(B604 Buxarî, Ezan, 1)



**334.** Ebû Umeyr bin Enes (r.) ji mameke xwe yê Ensarî rîwayet kiriye ku gotiye: "Pêxember (s.) ji bona komkirina miravan bo nimêje difikirî. Vêca hinekan jêre gotin: 'Dema kete wextê nimêjê de alayekî daçikîne ku mirovan ew ala dîditin wê yek û du agahdar bikin.' Belê ev teklîf ne eciband... Piştî vê Ebdullah bin Zeyd bin Ebdirebbih (r.), ji wir veqetiha belê kete derdê vê fikra Resûlê Xwedê (s.) de. Vêca (wê şevê) ezan kete xewna wî de. Di wextê sibhê de berê xwe da cem Resûlê Xwedê û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ez di navbera xew û şiyarbûnê de bûm, vêca ji nişkave yek hate cem min û ez hînê ezanê kirim... Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ey bîlal! Rabe ka Ebdullah bin Zeyd çi ji tere bêjê bike.'*"

(D498 Ebû Dawûd, Salat, 27)



٣٣٥- عَنْ حَفْصِ بْنِ عَاصِمِ بْنِ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا قَالَ الْمُؤَذِّنُ اللَّهُ أَكْبَرُ اللَّهُ أَكْبَرُ. فَقَالَ أَحَدُكُمْ: اللَّهُ أَكْبَرُ اللَّهُ أَكْبَرُ. ثُمَّ قَالَ: أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ. قَالَ: أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ ثُمَّ قَالَ: أَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ. قَالَ: أَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ. ثُمَّ قَالَ: حَيَّ عَلَى الصَّلاَةِ. قَالَ: لاَ حَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللَّهِ. ثُمَّ قَالَ: حَيَّ عَلَى الْفَلاَحِ. قَالَ: لاَ حَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللَّهِ. ثُمَّ قَالَ: اللَّهُ أَكْبَرُ اللَّهُ أَكْبَرُ. قَالَ: اللَّهُ أَكْبَرُ اللَّهُ أَكْبَرُ. ثُمَّ قَالَ: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ. قَالَ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ، مِنْ قَلْبِهِ دَخَلَ الْجَنَّةَ."



٣٣٦- عَنْ مَالِكِ بْنِ الْحُوَيْرِثِ قَالَ: أَتَى رَجُلَانِ النَّبِيَّ ﷺ يُرِيدَانِ السَّفَرَ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِذَا أَنْتُمَا خَرَجْتُمَا فَأَذِّنَا ثُمَّ أَقِيمَا، ثُمَّ لِيَؤُمَّكُمَا أَكْبَرُكُمَا."



٣٣٧- عَنْ مَعْدَانَ بْنِ أَبِي طَلْحَةَ الْيَعْمُرِيِّ قَالَ: قَالَ لِي أَبُو الدَّرْدَاءِ: أَيْنَ مَسْكَنُكَ؟ قَالَ: قُلْتُ فِي قَرْيَةٍ دُونَ حِمْصَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَا مِنْ ثَلَاثَةٍ فِي قَرْيَةٍ فَلَا يُؤَذَّنُ، وَلَا تُقَامُ فِيهِمْ الصَّلَوَاتُ إِلَّا اسْتَحْوَذَ عَلَيْهِمْ الشَّيْطَانُ، عَلَيْكَ بِالْجَمَاعَةِ، فَإِنَّمَا يَأْكُلُ الذِّئْبُ الْقَاصِيَةَ."

**335.** Hefs bin 'Asim bin Umer bin el-Xettab (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe Umer bin el-Xettab ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Dema muezzin bêje: *'Ellahu ekber, Ellahu ekber' yek ji we jî bêje: 'Ellahu ekber, Ellahu ekber' piştre muezzin bêje: 'Eşhedu en la îlahe îllellah' ew jî bêje: 'Eşhedu en la îlahe îllellah'; piştre muezzin bêje: 'Eşhedu enne Muhammeden Resûlullah' ew jî bêje: 'Eşhedu enne Muhammeden Resûlullah'; piştre muezzin bêje: 'Heyye 'ele's-selah' ew jî bêje: 'La hewle we la quwwete îlla bîllah'; piştre muezzin bêje: 'Heyye 'ele'l-felah' ew jî bêje: 'La hewle we la quwwete îlla bîllah'; piştre muezzin bêje: 'Ellahu ekber, Ellahu ekber' ew jî bêje: 'Ellahu ekber, Ellahu ekber' piştre muezzin bêje: 'La îlahe îllellah' ew jî ji can û dil bêje: 'La îlahe îllellah'; wê biçe cennetê."*

(M850 Muslim, Salat, 12)



**336.** Malik bin Huweyris (r.) gotiye: "Du zilam hatin cem Pêxember (s.) dixwestin herin seferekî. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji wan re got: *"Dema hûn bi rê ketin (û kete wextê nimêjê) bang bidin, piştre qamet bikin û piştre kî ji we mestir be bila pêşiya we nimêj bike."*

(B630 Buxarî, Ezan, 18)



**337.** Me'dan b. Ebî Telhe el-Ye'murî gotiye: "Ebu'd-Derda ji min pirsî: 'Ma mala te li kû ye?' Min jêre got: 'Li gundek nêzî Hımsê ye.' Vêca got: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Çi gundê sê kes tê de dijîn hebe vêca têde bang neyê xwendin û nimêj neyê kirin, wê şeytan musselletê wan bibe. Dewamê li ser cemaetê bike. Lewra kesê ji cemaetê veqetê wê gur wî bixwe.'"*

(HM28064 Ibn Hanbel, VI, 445)

# EZAN
## BANGA ÎSLAMÊ YA KU SER HEYAMA RE YE

٣٣٨- أَنَّ النَّضْرَ بْنَ سُفْيَانَ حَدَّثَهُ أَنَّهُ سَمِعَ أَبَا هُرَيْرَةَ يَقُولُ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَامَ بِلاَلٌ يُنَادِى فَلَمَّا سَكَتَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قَالَ مِثْلَ هَذَا يَقِينًا دَخَلَ الْجَنَّةَ."



٣٣٩- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يُرَدُّ الدُّعَاءُ بَيْنَ الْأَذَانِ وَالْإِقَامَةِ."



٣٤٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَوْ يَعْلَمُ النَّاسُ مَا فِي النِّدَاءِ وَالصَّفِّ الْأَوَّلِ ثُمَّ لَمْ يَجِدُوا إِلَّا أَنْ يَسْتَهِمُوا عَلَيْهِ لَاسْتَهَمُوا..."



٣٤١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْمُؤَذِّنُ يُغْفَرُ لَهُ مَدَى صَوْتِهِ، وَيَشْهَدُ لَهُ كُلُّ رَطْبٍ وَيَابِسٍ، وَشَاهِدُ الصَّلاَةِ يُكْتَبُ لَهُ خَمْسٌ وَعِشْرُونَ صَلاَةً، وَيُكَفَّرُ عَنْهُ مَا بَيْنَهُمَا."



# EZAN
## BANGA ÎSLAMÊ YA KU SER HEYAMA RE YE

**338.** Nedr bin Sufyan (r.) gotiye: "Min ji Ebû Hureyre (r.) bihîst digot: 'Em digel Resûlê Xwedê bûn. Vêca Bîlal rabû bang da. Dema xilaskir, Resûlê Xwedê (s.) got: *'Çi kesê bi bawerî mîna vê bêje (bangê dubare bike) wê biçe cennetê."*

(N675 Nesaî, Ezan, 34)



**339.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew duayên di neqeba bang û qametê de têne kirin şûnde nayên zivirandin."*

(D521 Ebû Dawûd, Salat, 35)



**340.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke mirovan zanîba çi qeder xêr di bangdan û di rûniştina di sefa pêşî de heye û jibo bidesxistina wan ji bilî qurekirinê çareyek dîtir nedîtibana bê guman wê di nav xwe de qure kiribana..."*

(B615 Buxarî, Ezan, 9; M981 Muslim, Salat, 129)



**341.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi qeder hêzbûna dengê muezzinî gunehên wî têne efû kirin û çi tiştê hişk û ter (çi hebe) hemî jê re şahidiyê dikin. Kesê beşdarê nimêja (cemaet) bibe, jêre xêra bîst û pênc nimêjan heye û gunehên di neqeba du wext nimêjan de têne efû kirin."*

(D515 Ebû Dawûd, Salat, 31)



٣٤٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ قَالَ حِينَ يَسْمَعُ النِّدَاءَ: اللَّهُمَّ رَبَّ هَذِهِ الدَّعْوَةِ التَّامَّةِ وَالصَّلاَةِ الْقَائِمَةِ، آتِ مُحَمَّدًا الْوَسِيلَةَ وَالْفَضِيلَةَ، وَابْعَثْهُ مَقَامًا مَحْمُودًا الَّذِى وَعَدْتَهُ، حَلَّتْ لَهُ شَفَاعَتِى يَوْمَ الْقِيَامَةِ."

# QIBLE
## PÊŞBERA MISILMANA YA MUŞTEREK/ÎSTÎQAMET

٣٤٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما: بَيْنَا النَّاسُ يُصَلُّونَ الصُّبْحَ فِى مَسْجِدِ قُبَاءٍ إِذْ جَاءَ جَاءٍ فَقَالَ: أَنْزَلَ اللَّهُ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ قُرْآنًا أَنْ يَسْتَقْبِلَ الْكَعْبَةَ فَاسْتَقْبِلُوهَا، فَتَوَجَّهُوا إِلَى الْكَعْبَةِ.



٣٤٤- عَنْ عَطَاءٍ قَالَ: سَمِعْتُ ابْنَ عَبَّاسٍ قَالَ: لَمَّا دَخَلَ النَّبِيُّ ﷺ الْبَيْتَ دَعَا فِى نَوَاحِيهِ كُلِّهَا، وَلَمْ يُصَلِّ حَتَّى خَرَجَ مِنْهُ، فَلَمَّا خَرَجَ رَكَعَ رَكْعَتَيْنِ فِى قُبُلِ الْكَعْبَةِ وَقَالَ: "هَذِهِ الْقِبْلَةُ."



٣٤٥- قَالَ أَبُو ذَرٍّ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَزَالُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ مُقْبِلاً عَلَى الْعَبْدِ وَهُوَ فِى صَلاَتِهِ مَا لَمْ يَلْتَفِتْ، فَإِذَا الْتَفَتَ انْصَرَفَ عَنْهُ."



**342.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê dema dengê bangê kir vê duayê bixwêne Roja Qiyametê wê şefaeta min bigihêjiyê: 'Ey Xwedayê min, rebbê vê banga tam û vê nimêja tê kirin! Tu her cure wesileyên ku nêzîkê Te dikin û fezîletê bide Muhemmed. Ewî bigihîne wî Meqamê Mehmûdê Te soz dayiyê."*

(B614 Buxarî, Ezan, 8; D529 Ebû Dawûd, Salat, 37)

# QIBLE
## PÊŞBERA MISILMANA YA MUŞTEREK/ÎSTÎQAMET

**343.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin got: "Di hîna ku mirov di Mizgefta Qubayê de ser nimêja sibhê de bûn, ji nişka ve yek hat û got: 'Xwedê ayetek ji Qur'anê nazil kir ser Pêxember (s.) ku berê xwe bide Ke'beyê, vêca hûn jî berê xwe bidinê.' Li ser vê yekê ewan berê xwe zivirandin dane Ke'beyê."

(B4488 Buxarî, Tefsîr, Beqere, 14)



**344.** 'Eta (r.) gotiye: "Min ji Ibn Ebbas (r.) bihîst digot: 'Dema Resûlê Xwedê (s.) (roja fetha Mekkeyê) kete Ke'beyê de, li hemî quncikên wê de dua kir û bêyî ku tê de nimêj bike derket. Dema jê derket pêşberê Kebê de du riket nimêj kir û got: *'Qible ev e.'*"

(B398 Buxarî, Salat, 30)



**345.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê berê xwe dide ebdê xwe yê ser nimêjê de ye heta ku bi derdora xwe ve mijûl nebe, çi dema bi derdora xwe ve mijûl bû, Xwedê jî berê xwe jê dizivirîne."*

(D909 Ebû Dawûd, Salat, 160-161)



٣٤٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ صَلَّى صَلاَتَنَا وَاسْتَقْبَلَ قِبْلَتَنَا وَأَكَلَ ذَبِيحَتَنَا فَذَلِكَ الْمُسْلِمُ الَّذِى لَهُ ذِمَّةُ اللَّهِ وَذِمَّةُ رَسُولِهِ، فَلاَ تُخْفِرُوا اللَّهَ فِى ذِمَّتِهِ."

# KE'BE
## MALA XWEDÊ

٣٤٧- عَنْ أُمِّى صَفِيَّةَ بِنْتِ شَيْبَةَ قَالَتْ سَمِعْتُ الْأَسْلَمِيَّةَ تَقُولُ: قُلْتُ لِعُثْمَانَ: مَا قَالَ لَكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حِينَ دَعَاكَ؟ قَالَ: "إِنِّى نَسِيتُ أَنْ آمُرَكَ أَنْ تُخَمِّرَ الْقَرْنَيْنِ فَإِنَّهُ لَيْسَ يَنْبَغِى أَنْ يَكُونَ فِى الْبَيْتِ شَيْءٌ يَشْغَلُ الْمُصَلِّى."



٣٤٨- عَنْ أَبِي شُرَيْحٍ أَنَّهُ قَالَ لِعَمْرِو بْنِ سَعِيدٍ -وَهُوَ يَبْعَثُ الْبُعُوثَ إِلَى مَكَّةَ- ائْذَنْ لِى أَيُّهَا الْأَمِيرُ! أُحَدِّثْكَ قَوْلاً قَامَ بِهِ النَّبِيُّ ﷺ الْغَدَ مِنْ يَوْمِ الْفَتْحِ، سَمِعَتْهُ أُذُنَايَ وَوَعَاهُ قَلْبِى، وَأَبْصَرَتْهُ عَيْنَايَ، حِينَ تَكَلَّمَ بِهِ، حَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ ثُمَّ قَالَ: "إِنَّ مَكَّةَ حَرَّمَهَا اللَّهُ، وَلَمْ يُحَرِّمْهَا النَّاسُ، فَلاَ يَحِلُّ لِامْرِئٍ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ أَنْ يَسْفِكَ بِهَا دَمًا، وَلاَ يَعْضِدَ بِهَا شَجَرَةً..."



**346.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê weke em nimêj dikin nimêj bike, berê xwe bide qinleya me û ji heywana me ser jêkirî bixwe, ew dibe ji wî Misilmanê ku jêre zimmeta Xwedê û zimmeta Resûlê Wî heyî ye (ku ewlewî dayînê). Vêca hûn bi xirakirina zimmeta Xwedê xiyaneta Wî nekin."*

(B391 Buxarî, Salat, 28)

# KE'BE
## MALA XWEDÊ

**347.** Sefiyye bint Şeybe gotiye: "Min ji el-Eslemiyyeyê bihîst digot: 'Min ji Osman pirsî: 'Dema Resûlê Xwedê (s.) gazî te kir çi ji te re got?' Osman (r.) dibêje: Resûlê Xwedê wiha got: *"Min jibîr kir emrê te bikim ku tu wan herdu sitirhên (ji dema şirkê mayîn) ji Ke'beyê derîxî (wan derêxe). Lewra lazime di Beytê de tiştek a ku nimêjkera meşxûl bike nemîne."*

(D2030 Ebû Dawûd, Menasik, 93)



**348.** Ebû Şureyh, ji 'Emr bin Seîd ê ku dixwest esker bişiyêne Mekkeyê re gotiye: "Ey Emîr! Destûrê bide, ez ji te re hedîseka Pêxember (s.) roja piştî fetha Mekkeyê got û dema pê şitexilî min bi herdû çavên xwe dîtî û bi guhên xwe jê bihîstî ji te re bêjim. Resûlê Xwedê hemd û senayê Xwedê kir, piştre got: *"Xwedê Teala Mekke heram kiriye (pîroz û nedestdayî kiriye), ne mirovan heram kiriye. Ji kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe re ne helal e ku li wê derê xwînê birjîne an dara qut bike..."*

(B104 Buxarî, Ilim, 37)



٣٤٩- حَدَّثنَا عَبْدُ اللَّهِ بْنُ عَمْرٍو قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَطُوفُ بِالْكَعْبَةِ وَيَقُولُ: "مَا أَطْيَبَكِ وَأَطْيَبَ رِيحَكِ مَا أَعْظَمَكِ وَأَعْظَمَ حُرْمَتَكِ..."

# HECC
## SEFERA MALA XWEDÊ

٣٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "أَيُّهَا النَّاسُ! قَدْ فُرِضَ عَلَيْكُمُ الْحَجُّ فَحُجُّوا."



٣٥١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ الْفَضْلِ أَوْ أَحَدِهِمَا عَنِ الْآخَرِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَرَادَ الْحَجَّ فَلْيَتَعَجَّلْ فَإِنَّهُ قَدْ يَمْرَضُ الْمَرِيضُ وَتَضِلُّ الضَّالَّةُ وَتَعْرِضُ الْحَاجَةُ."



٣٥٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَنْ حَجَّ هَذَا الْبَيْتَ، فَلَمْ يَرْفُثْ، وَلَمْ يَفْسُقْ، رَجَعَ كَيَوْمِ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ."



٣٥٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...الْحَجُّ الْمَبْرُورُ لَيْسَ لَهُ جَزَاءٌ إِلاَّ الْجَنَّةُ."



**349.** Ebdullah bin 'Emr (r.) dibêje: "Min Resûlê Xwedê (s.) dît Ke'be tewaf dikir û digot: *"(Ey Ke'be!) Çiqas tu xweş î û çiqas bêhna te jî xweş e! Tu çiqas mezinî û pîroziya te jî çiqas mezin e."*

(İM3932 Ibn Maceh, Fîten, 2)

# HECC
## SEFERA MALA XWEDÊ

**350.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) xutbeyek ji me re xwend û got: *'Gelî mirovan! Hec li ser hewe ferz bûye. Heccê bikin.'"*

(M3257 Muslim, Hec, 412)



**351.** Li gorî ku Ibn Ebbas (r.) ji el-Fedl (r.) an jî el-Fedl ji Ibn Ebbas ragihandî, Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bixaze heccê bike bila lezê bike. Lewra dibe ku (mirov) nexweş bikeve an heywana ku lê suwar dibe winda bibe an jî îhtiyaciyek (bibe maniê heccê) peyda bibe."*

(İM2883 Ibn Maceh, Menasik, 1; D1732 Ebû Dawûd, Menasik, 5)



**352.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê Ke'beyê hecc bike û(di îhramê de) xwe nêzîkê pîreka xwe nekiribe û guneh nekiribe, wê vegere weke roja ji dayîk bûyî (bêguneh bimîne)."*

(B1820 Buxarî, Muhsar, 10)



**353.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mukafata hecca (ji teref Xwedê ve) qebûl bûyî cennet e."*

(B1773 Buxarî, Umre, 1)



٣٥٤- قَالَ عَبْدُ اللَّهِ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "بُنِيَ الْإِسْلاَمُ عَلَى خَمْسٍ شَهَادَةِ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ وَإِقَامِ الصَّلاَةِ وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ وَحَجِّ الْبَيْتِ وَصَوْمِ رَمَضَانَ."

# HECKÎRIN
## HEC EREFE YE

٣٥٥- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ يَعْمُرَ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ : "الْحَجُّ عَرَفَةُ..."



٣٥٦- عَنْ طَلْحَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ كَرِيزٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَفْضَلُ الدُّعَاءِ دُعَاءُ يَوْمِ عَرَفَةَ."



٣٥٧- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّمَا جُعِلَ الطَّوَافُ بِالْبَيْتِ وَبَيْنَ الصَّفَا وَالْمَرْوَةِ وَرَمْيُ الْجِمَارِ لِإِقَامَةِ ذِكْرِ اللَّهِ."



٣٥٨- عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ مُسْلِمٍ يُلَبِّى إِلاَّ لَبَّى مَنْ عَنْ يَمِينِهِ وَ شِمَالِهِ مِنْ حَجَرٍ أَوْ شَجَرٍ أَوْ مَدَرٍ حَتَّى تَنْقَطِعَ الْأَرْضُ مِنْ هَهُنَا وَهَهُنَا."

**354.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îslam li ser pênc bingehan ava bûye: Şehdebûna ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda tüne ne û Muhemmed ebdê Wî û resûlê Wî ye, nimêj kirin, zikat dayîn, hecca Ke'bê û rojîgirtina heyva Remezanê."*

(M113 Muslim, Îman, 21)

# HECKIRIN

## HEC EREFE YE

**355.** Ji Ebdurrehman bin Ye'mur (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hec Erefe ye (mayîna lê ye)."*

(N3019 Nesaî, Menasiku'l-hec, 203; T889 Tirmizî, Hec, 57)



**356.** Ji Telhe bin Ubeydillah bin Kerîz (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirînê dua, ew duaya ku Roja Erefê tê kirin e."*

(MU951 Muwetta', Hec, 81)



**357.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tewafa Ke'bê û se'ya Sefa û Merweyê û recma şeytên ji bo zikrê Xwedê werine kirin hene (ne jibo xeflet û gotinê bêfeyde hene)."*

(D1888 Ebû Dawûd, Menasik 50; T902 Tirmizî, Hec, 64)



**358.** Ji Sehl bin Se'd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema Misilmanek telbiyê tîne, li milê wî yê rastê û li milê wî yê çepê çi kevir û dar û axa ji vî milê erdê heta wî milê erdê (bi destê xwe îşaret kir) hene hemî pêre telbiye tênin."*

(T828 Tirmizî, Hec, 14; İM2921 Ibn Maceh, Menasik, 15)

# UMRE
## AVAKIRINA DINYA ME‘NEWÎ

٣٥٩- عَنْ جَابِرٍ: أَنَّ النَّبيَّ ﷺ سُئِلَ عَنِ الْعُمْرَةِ أَوَاجِبَةٌ هِيَ؟ قَالَ: "لاَ وَأَنْ تَعْتَمِرُوا هُوَ أَفْضَلُ."



٣٦٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ:"الْعُمْرَةُ إِلَى الْعُمْرَةِ كَفَّارَةٌ لِمَا بَيْنَهُمَا، وَالْحَجُّ الْمَبْرُورُ لَيْسَ لَهُ جَزَاءٌ إِلاَّ الْجَنَّةُ."



٣٦١- عَنْ أُمِّ مَعْقِلٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ:"عُمْرَةٌ فِى رَمَضَانَ تَعْدِلُ حَجَّةً."



٣٦٢- عَنْ عُمَرَ أَنَّهُ اسْتَأْذَنَ النَّبِيَّ ﷺ فِى الْعُمْرَةِ فَقَالَ:"أَيْ أُخَيَّ أَشْرِكْنَا فِى دُعَائِكَ وَلاَ تَنْسَنَا."



٣٦٣- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِىِّ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَيُحَجَّنَّ الْبَيْتُ وَلَيُعْتَمَرَنَّ بَعْدَ خُرُوجِ يَأْجُوجَ وَمَأْجُوجَ."

# UMRE
## AVAKIRINA DINYA ME'NEWÎ

**359.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: *"Ma umre ferz e?" Resûlê Xwedê (s.) got: "Nexêr, belê hûn umrê bikin xêrtir e."*

(T931 Tirmizî, Hec, 88)



**360.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Du umre dibine keffaretê gunehên di neqeba wan de hatine kirin. Mukafatê hecca (ji teref Xwedê ve) hatî qebul kirin cennet e."*

(B1773 Buxarî, Umre, 1; M3289 Muslim, Hec, 437)



**361.** Ji Ummu Me'qil (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Umreyek di heyva Remezanê de miqabilî heccekî ye."*

(T939 Tirmizî, Hec, 95)



**362.** Ji Hz. Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji bo çûyîna umrê destur ji Resûlê Xwedê (s.) xwest: Vêca Resûlê Xwedê (s.) izna wî da û jê re got: *"Birayê min! Me jî bixe şirîkê duayên xwe û me jibîr neke."*

(T3562 Tirmizî, De'ewat, 109; İM2894 Ibn Maceh, Menasik, 5)



**363.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Piştî derketina Ye'cûc û Me'cûcan jî mitleqa wê hec û umre werine kirin."*

(B1593 Buxarî, Hec, 47)

# ZEMZEM
## AVA MUBAREK YA VEXWARİNA WÊ ŞÎFA

٣٦٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَرْحَمُ اللَّهُ أُمَّ إِسْمَاعِيلَ لَوْلاَ أَنَّهَا عَجِلَتْ لَكَانَ زَمْزَمُ عَيْنًا مَعِينًا."



٣٦٥- قَالَ أَبُو ذَرٍّ... قَالَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّهَا مُبَارَكَةٌ إِنَّهَا طَعَامُ طُعْمٍ."



٣٦٦- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"مَاءُ زَمْزَمَ لِمَا شُرِبَ لَهُ."

# REMEZAN
## HEYVA REHMET, MEXFÎRET Û BERAETÊ

٣٦٧- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا دَخَلَ رَجَبٌ، قَالَ: "اَللَّهُمَّ بَارِكْ لَنَا فِي رَجَبٍ، وَشَعْبَانَ، وَبَلِّغْنَا رَمَضَانَ."



# ZEMZEM
## AVA MUBAREK YA VEXWARÎNA WÊ ŞÎFA

**364.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê rehma xwe li dayîka Îsmaîl bike, heke ewê (ji bo derdorgirtina avê) ecele ne kriba, wê zemzem bûba kehniyek herikî.)*

(B3362 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 9)



**365.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew (zemzem) bi rastî mübarek e û birastî zadeke têrdike ye."*

(HM21858 Ibn Hanbel, V, 174; M6359 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 132)



**366.** Ji Cabir (bin Ebdîllah) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ava zemzemê bi çi armancê were vexwarin feydedar e."*

(HM14910 Ibn Hanbel, III, 357; İM3062 Ibn Maceh, Menasik, 78)

# REMEZAN
## HEYVA REHMET, MEXFÎRET Û BERAETÊ

**367.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) dikete heyva Recebê de digot: *"Ya Rebbî! Tu Receb û Şebanê ji me re mubarek û pîroz bike û me bigihîne Remezanê."*

(ME3939 Taberanî, el-Mu'cemu'l-evsat, IV, 189)



٣٦٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَتَاكُمْ رَمَضَانُ شَهْرٌ مُبَارَكٌ، فَرَضَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ عَلَيْكُمْ صِيَامَهُ، تُفْتَحُ فِيهِ أَبْوَابُ السَّمَاءِ، وَتُغْلَقُ فِيهِ أَبْوَابُ الْجَحِيمِ، وَتُغَلُّ فِيهِ مَرَدَةُ الشَّيَاطِينِ."



٣٦٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ صَامَ رَمَضَانَ إِيمَانًا وَاحْتِسَابًا غُفِرَ لَهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِهِ."



٣٧٠- عَنْ هِشَامِ بْنِ عُرْوَةَ عَنْ أَبِيهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "تَحَرَّوْا لَيْلَةَ الْقَدْرِ فِى الْعَشْرِ الْأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ."



٣٧١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ: "الصَّلَوَاتُ الْخَمْسُ، وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ، وَرَمَضَانُ إِلَى رَمَضَانَ، مُكَفِّرَاتٌ مَا بَيْنَهُنَّ إِذَا اجْتَنَبَ الْكَبَائِرَ."

# ROJÎ
## TENÊ JI BO XWEDÊ

٣٧٢- قَالَ عَبْدُ اللَّهِ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "بُنِيَ الْإِسَلامُ على خَمْسٍ، شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلاَّ اللَّه، وأَنَّ مُحَمَّداً رَسُولُ اللَّهِ، وإِقَامِ الصَّلَاةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَحَجِّ البَيْتِ، وَصَوْمِ رَمضَانَ."



**368.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Vaye) Heyva Remezan a mubarek hat, Xwedê rojîgirtina wê li ser hewe ferz kiriye. Di vê mehê de deriyên asîmana (cennetê) vedibin û deriyên cehnemê têne girtin û şeytanên har têne girêdan."*

(N2108 Nesaî, Siyam, 5)



**369.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê bi bawerî û tenê hêviya xêrê ji Xwedê bike rojiya Remezanê bigire, gunehên wî yên buhûrîn têne efûkirin."*

(B38 Buxarî, Îman, 28)



**370.** Hîşam bin 'Urwe (r.) bi rêya bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di dehkên paşî yên Meha Remezanê de li Şeva Leyletu'l-Qedrê, bigerihin."*

(MU701 Muwatta', I'itkaf, 6)



**371.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pênc nimêj û du în û du Remezan, ji bilî gunehên mezin/kebair ji gunehên di neqeba wan de hatine kirin re kefaret in."*

(M552 Muslim, Teharet, 16)

## ROJÎ
### TENÊ JI BO XWEDÊ

**372.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îslam li ser pênc bingehan ava bûye: Şehdebûna ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda tunene û Muhemmed ebdê Wî û resûlê Wî ye, nimêj kirin, zikat dayîn, hecca Ke'bê û rojîgirtina heyva Remezanê."*

(M113 Muslim, Îman, 21)



٣٧٣- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهَا : أَنَّ قُرَيْشًا كَانَتْ تَصُومُ يَوْمَ عَاشُورَاءَ فِى الْجَاهِلِيَّةِ، ثُمَّ أَمَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِصِيَامِهِ حَتَّى فُرِضَ رَمَضَانُ وَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ شَاءَ فَلْيَصُمْهُ، وَمَنْ شَاءَ أَفْطَرَهُ."



٣٧٤- عَنْ أَبِى أَيُّوبَ الْأَنْصَارِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَنَّهُ حَدَّثَهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ صَامَ رَمَضَانَ ثُمَّ أَتْبَعَهُ سِتًّا مِنْ شَوَّالٍ، كَانَ كَصِيَامِ الدَّهْرِ."



٣٧٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: أَوْصَانِى خَلِيلِى ﷺ بِثَلاَثٍ: صِيَامِ ثَلاَثَةِ أَيَّامٍ مِنْ كُلِّ شَهْرٍ، وَرَكْعَتَيِ الضُّحَى، وَأَنْ أُوتِرَ قَبْلَ أَنْ أَنَامَ.



٣٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَفْضَلُ الصِّيَامِ بَعْدَ شَهْرِ رَمَضَانَ، شَهْرُ اللَّهِ الْمُحَرَّمُ، وَأَفْضَلُ الصَّلاَةِ بَعْدَ الْفَرِيضَةِ، صَلاَةُ اللَّيْلِ."

# ROJÎGIRTIN
## PERWERDEYA SEBRÊ

٣٧٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الصِّيَامُ جُنَّةٌ، فَلاَ يَرْفُثْ وَلاَ يَجْهَلْ، وَإِنِ امْرُؤٌ قَاتَلَهُ أَوْ شَاتَمَهُ فَلْيَقُلْ: إِنِّى صَائِمٌ مَرَّتَيْنِ..."



**373.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Qureyşiyan di dewra cahiliyetê de Roja Aşûrayê rojî digirtin. Piştre Resûlê Xwedê (s.) emrê rojîgirtina Aşûrayê kir. Lê dema Remezan ferz bû, Resûlê Xwedê (s.) got: *"Kesê bixwaze bila (Aşûrayê) de rojî bigire û kesê nexwaze bila negire."*

(B1893 Buxarî, Sawm, 1)



**374.** Ji Ebû Eyyûb el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê rojiya Remezanê bigire piştre jî şeş rojan ji Şewalê lê zêde bike, weke ku rojiya salekî girtî (tê qebûlkirin)."*

(M2758 Muslim, Siyam, 204)



**375.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Dostê min Resûlê Xwedê (s.) şîreta sê tişta li min kir: Rojîgirtina sê rojan ji her heyvê, kirina du riket sinnetê Duhayê û berî razanê sê riket sinnêtê witrê."

(B1981 Buxarî, Sawm, 60)



**376.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Piştî Meha Remezanê rojiya herî xêr ya di heyva Xwedê heyva Muherremê de tê girtin e. Piştî nimêja ferz bixêrtirîn nimêj, nimêja şevê ye."*

(M2755 Muslim, Siyam, 202)

# ROJÎGIRTIN
## PERWERDEYA SEBRÊ

**377.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rojî mertal e. Bila rojîgir bêedebiyê neke û gotinên pîs nebêje. Heke kesekî pêre şer kir an jî dujûn lê kirin bila ducara bêje: "Ez birojî me…"*

(B1894 Buxarî, Sawm, 2)



٣٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ لَمْ يَدَعْ قَوْلَ الزُّورِ وَالْعَمَلَ بِهِ، فَلَيْسَ لِلَّهِ حَاجَةٌ فِى أَنْ يَدَعَ طَعَامَهُ وَشَرَابَهُ."



٣٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "رُبَّ صَائِمٍ لَيْسَ لَهُ مِنْ صِيَامِهِ إِلاَّ الْجُوعُ. وَرُبَّ قَائِمٍ لَيْسَ لَهُ مِنْ قِيَامِهِ إِلاَّ السَّهَرُ."



٣٨٠- عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "تَسَحَّرُوا فَإِنَّ فِى السُّحُورِ بَرَكَةً."



٣٨١- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ فَطَّرَ صَائِمًا كَانَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِهِ غَيْرَ أَنَّهُ لاَ يَنْقُصُ مِنْ أَجْرِ الصَّائِمِ شَيْئًا."

# PAŞÎV Û FITAR
## BEREKET Û ŞAHIYA KU BI ROJIYÊ RE TÊ

٣٨٢- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "فَصْلُ مَا بَيْنَ صِيَامِنَا وَصِيَامِ أَهْلِ الْكِتَابِ أَكْلَةُ السَّحَرِ."



**378.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê dev ji derewan û dev ji emelkirina bi derewan bernede, (bila zanibe) îhtiyaciya Xwedê bi terkkirina wî ya xwarin û vexwarinê nîn e."*

(B1903 Buxarî, Sawm, 8)



**379.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelek rojîgir hene kar û nesîbê wan tenê birçîbûn e. Gelek kesê şevê bi îbadet derbas dikin hene kar û nesîbê wan tenê bêxewi ye."*

(İM1690 Ibn Maceh, Siyam, 21)



**380.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rabin paşîvê. Lewra di paşîvê de bereket heye."*

(M2549 Muslim, Siyam, 45)



**381.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê îftarê bide rojîgirekî, jê re biqasî xêra rojîgirî xêr heye û ji xêra rojîgirî tiştek jî kêm nabe."*

(T807 Tirmizî, Sawm, 82)

# PAŞÎV Û FITAR
## BEREKET Û ŞAHIYA KU BI ROJIYÊ RE TÊ

**382.** Ji 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tişta ku rojiya me û rojiya Ehlu'l-Kîtaba ji hev vediqetîne xwarina paşîvê ye."*

(M2550 Muslim, Siyam, 46)



٣٨٣- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "تَسَحَّرُوا فَإِنَّ فِى السُّحُورِ بَرَكَةً."



٣٨٤- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلَّهِ عِنْدَ كُلِّ فِطْرٍ عُتَقَاءَ وَذَلِكَ فِى كُلِّ لَيْلَةٍ."



٣٨٥- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"مَنْ فَطَّرَ صَائِمًا كَانَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِهِ غَيْرَ أَنَّهُ لاَ يَنْقُصُ مِنْ أَجْرِ الصَّائِمِ شَيْئًا."



٣٨٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا أَفْطَرَ عِنْدَ أُنَاسٍ قَالَ: "أَفْطَرَ عِنْدَكُمُ الصَّائِمُونَ، وَأَكَلَ طَعَامَكُمُ الْأَبْرَارُ، وَتَنَزَّلَتْ عَلَيْكُمُ الْمَلاَئِكَةُ."

# Î'TÎKAF
## DI REMEZANÊ DE MUHASEBA NEFSÊ

٣٨٧- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ : أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَعْتَكِفُ الْعَشْرَ الْأَوَاخِرَ مِنْ رَمَضَانَ حَتَّى تَوَفَّاهُ اللَّهُ تَعَالَى...



**383.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rabin paşîvê. Lewra di paşîvê de bereket heye."*

(M2549 Muslim, Siyam, 45; B1923 Buxarî, Sawm, 20)



**384.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman di her dema fitarê de azadeyên Xwedê hene (Xwedê wan ji cehnemê azad dike), Ev ji bo tev şevên Remezanê ne."*

(İM1643 Ibn Maceh, Siyam, 2)



**385.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê îftarê bide rojîgirekî, jê re biqasî xêra rojîgirî xêr heye û ji xêra rojîgirî tiştek jî kêm nabe."*

(T807 Tirmizî, Sawm, 82)



**386.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) li cem mirovnina fitirîba digot: *"Rojîgir li cem hewe bifitirin, salih û qencê Xwedê xwarina we bixun û melaîket ser we de werin."*

(DM1805 Darimî, Sawm, 51)

# Î'TÎKAF
## DI REMEZANÊ DE MUHASEBA NEFSÊ

**387.** Xanima Resûlê Xwedê Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) di dehkên dawî yê Meha Remezanê de dikete itîkafê heta wefat kir..."

(B2026 Buxarî, I'tîkaf, 1)



٣٨٨- قَالَتْ عَائِشَةُ [ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا ]: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَجْتَهِدُ فِى الْعَشْرِ الْأَوَاخِرِ مَا لاَ يَجْتَهِدُ فِى غَيْرِهِ.



٣٨٩- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُجَاوِرُ فِى الْعَشْرِ الْأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ وَيَقُولُ: "تَحَرَّوْا لَيْلَةَ الْقَدْرِ فِى الْعَشْرِ الْأَوَاخِرِ مِنْ رَمَضَانَ."



٣٩٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ فِى الْمُعْتَكِفِ: "هُوَ يَعْكِفُ الذُّنُوبَ وَيُجْرَى لَهُ مِنَ الْحَسَنَاتِ كَعَامِلِ الْحَسَنَاتِ كُلِّهَا."

# SEDEQA FITRÊ
## SEDEQA HEYÎNÊ

٣٩١- عَنْ قَيْسِ بْنِ سَعْدٍ قَالَ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِصَدَقَةِ الْفِطْرِ قَبْلَ أَنْ تَنْزِلَ الزَّكَاةُ، فَلَمَّا نَزَلَتِ الزَّكَاةُ لَمْ يَأْمُرْنَا وَلَمْ يَنْهَنَا وَنَحْنُ نَفْعَلُهُ.



**388.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) awayê ku di dehkên dawî yê Meha Remezanê de zêde îbadet dikir di tu rojên dîtir de nedikir."

(M2788 Muslim, I'tîkaf, 8)



**389.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) di dehkên dawî yê Meha Remezanê de îtîkaf dikir û digot: *"Li Leyletu'l-Qedrê di dehkên dawî yê Remezanê de bigerihin."*"

(B2020 Buxarî, Fedlu leyletî'l-qedr, 3)



**390.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê kesê îtîkafê de gotiye: *"Ew ji gunehan dûr dikeve û jê re weke xêra kesê qencî tev kirîn xêr têne nivîsandin."*

(İM1781 Ibn Maceh, Siyam, 67)

# SEDEQA FITRÊ
## SEDEQA HEYÎNÊ

**391.** Qeys bin Se'd (r.) dibêje: "Berî ku emrê dayîna zikatê nazil bibe, Resûlê Xwedê emrê me bi dayîna sedqeya fitrê dikir. Dema zikat ferz bû, ne emrê me bi dayîna zikata fitrê kir ne jî men'a me jêkir. Belê me bixwe (li ser) dayîna wê dewam kir."

(N2509 Nesaî, Zekat, 35; İM1828 Ibn Maceh, Zekat, 21)



٣٩٢- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: كُنْتُ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فى سَفَرٍ... ثُمَّ قَالَ: "أَلاَ أَدُلُّكَ عَلَى أَبْوَابِ الْخَيْرِ: الصَّوْمُ جُنَّةٌ، وَالصَّدَقَةُ تُطْفِئُ الْخَطِيئَةَ كَمَا يُطْفِئُ الْمَاءُ النَّارَ، وَصَلاَةُ الرَّجُلِ مِنْ جَوْفِ اللَّيْلِ" قَالَ: ثُمَّ تَلاَ ﴿تَتَجَافَى جُنُوبُهُمْ عَنِ الْمَضَاجِعِ﴾ حَتَّى بَلَغَ ﴿يَعْمَلُونَ﴾...



٣٩٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: فَرَضَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ زَكَاةَ الْفِطْرِ طُهْرَةً لِلصَّائِمِ مِنَ اللَّغْوِ وَالرَّفَثِ وَطُعْمَةً لِلْمَسَاكِينِ، مَنْ أَدَّاهَا قَبْلَ الصَّلاَةِ فَهِيَ زَكَاةٌ مَقْبُولَةٌ، وَمَنْ أَدَّاهَا بَعْدَ الصَّلاَةِ فَهِيَ صَدَقَةٌ مِنَ الصَّدَقَاتِ.



٣٩٤- عنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما قَالَ: فَرَضَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ زَكَاةَ الْفِطْرِ صَاعًا مِنْ تَمْرٍ، أَوْ صَاعًا مِنْ شَعِيرٍ عَلَى الْعَبْدِ وَالْحُرِّ، وَالذَّكَرِ وَالْأُنْثَى، وَالصَّغِيرِ وَالْكَبِيرِ مِنَ الْمُسْلِمِينَ، وَأَمَرَ بِهَا أَنْ تُؤَدَّى قَبْلَ خُرُوجِ النَّاسِ إِلَى الصَّلاَةِ.

**392.** Mu'az bin Cebel (r.) dibêje: "Ez bi Pêxember (s.) re di seferekî de bûm... Piştre Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma ez deriyên xêrê nîşanî te bikim?: Rojî mertal e. Çawa ku av agir vedimirîne sedeqe jî wisa guneha divemirêne. Yek dî jî ew e ku mirov di nîvê şevê de rabe nimêj bike ye."* Piştre jî Resûlê Xwedê ev ayet xwend: *"Ew bi tirs û bi hêvî ji bo ku ji Rebbê Xwe re îbadet bikin ji nav nivînan dirabin û ji rizqê me dayî wan ji bo Xwedê înfaq dikin. Vêca tu kes nizane ka Xwedê mukâfata emelên wan çi çavronî ji wan re veşartiye."*

(Secde, 32/16-17), (T2616 Tirmizî, Îman, 8)



**393.** Ibn Ebbas gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) zikata fitrê, hem de qene ji bo rojîgirî bibe paqijiya ji kirinên bêfeyde û ji gotinên pîs û pûç hem jî ji bo feqîran bibe xwarin û zad ferz kir. Kesê beriya nimêja eydê bide ew zikatek meqbûl e, kesê piştî nimêja eydê bide ew sedeqeyek ji sedeqeyan e."

(D1609 Ebû Dawûd, Zekat, 18; İM1827 Ibn Maceh, Zekat, 21)



**394.** Ibn Umer (r.) wiha gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) zikata fitrê li ser hurr û koleyan, zilam û jinan, piçûk û mezinan ê Misilman miqdarê sa'ek xurme, an sa'ek ce ferz kiriye. Û emir kiriye ku ev berî însan herine nimêja eydê were dayîn."

(B1503 Buxarî, Zekat, 70)

# ZIKAT
## PAQIJIYA MAL

٣٩٥- قَالَ عَبْدُ اللَّهِ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "بُنِيَ الْإِسْلاَمُ عَلَى خَمْسٍ شَهَادَةِ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ وَإِقَامِ الصَّلاَةِ وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ وَحَجِّ الْبَيْتِ وَصَوْمِ رَمَضَانَ."



٣٩٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ:... فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لَمْ يَفْرِضِ الزَّكَاةَ إِلاَّ لِيُطَيِّبَ مَا بَقِيَ مِنْ أَمْوَالِكُمْ..."



٣٩٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا نَقَصَتْ صَدَقَةٌ مِنْ مَالٍ..."



٣٩٨- عَنْ أَبِى مَالِكٍ الْأَشْعَرِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ:"...الزَّكَاةُ بُرْهَانٌ..."



٣٩٩- عَنْ كَعْبِ بْنِ عُجْرَةَ قَالَ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...وَالصَّدَقَةُ تُطْفِئُ الْخَطِيئَةَ كَمَا يُطْفِئُ الْمَاءُ النَّارَ..."

# ZIKAT
## PAQIJIYA MAL

**395.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îslam li ser pênc bingehan ava bûye: Şehdebûna ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda tunene û Muhemmed ebdê Wî û resûlê Wî ye, nimêj kirin, zikat dayîn, hecca Ke 'bê û rojîgirtina heyva Remezanê."*

(M113 Muslim, Îman, 21)



**396.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin… ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê, zikat tenê ji bo malê we yê mayî paqij bike ferz kiriye…"*

(D1664 Ebû Dawûd, Zekat, 32)



**397.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sedeqe/Zikat, malî kêm nake…"*

(M6592 Muslim, Birr we sile, 69)



**398.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"…Zikat, delîl û nişane ye ji bo misilmantîyê"*

(İM280 Ibn Maceh, Teharet, 5)



**399.** Ji Ke'b bin 'Ucre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"…Çawa ku av agir divemirîne sedeqe jî wisa gunehan divemirîne/dirake…"*

(T614 Tirmizî, Cum'a, 79; İM4210 Ibn Maceh, Zuhd, 22)

# ZIKATDAYÎN
## MALÊN TÊDE ZÎKAT HEYÎ Û NÎSABA ZIKATÊ

٤٠٠- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الأَنْصَارِيِّ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... خَيْرُ الصَّدَقَةِ مَا كَانَ عَنْ ظَهْرِ غِنًى."



٤٠١- عَنْ سَالِمِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ عَنْ أَبِيهِ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "فِيمَا سَقَتِ السَّمَاءُ وَالْعُيُونُ أَوْ كَانَ عَثَرِيًّا الْعُشْرُ، وَمَا سُقِيَ بِالنَّضْحِ نِصْفُ الْعُشْرِ."



٤٠٢- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لاَ زَكَاةَ فِى مَالٍ حَتَّى يَحُولَ عَلَيْهِ الْحَوْلُ."



٤٠٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مُعَاوِيَةَ الْغَاضِرِيِّ... قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "ثَلاَثٌ مَنْ فَعَلَهُنَّ فَقَدْ طَعِمَ طَعْمَ الْإِيمَانِ: مَنْ عَبَدَ اللَّهَ وَحْدَهُ وَأَنَّهُ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَعْطَى زَكَاةَ مَالِهِ طَيِّبَةً بِهَا نَفْسُهُ رَافِدَةً عَلَيْهِ كُلَّ عَامٍ وَلاَ يُعْطِى الْهَرِمَةَ وَلاَ الدَّرِنَةَ وَلاَ الْمَرِيضَةَ وَلاَ الشَّرَطَ اللَّئِيمَةَ وَلَكِنْ مِنْ وَسَطِ أَمْوَالِكُمْ فَإِنَّ اللَّهَ لَمْ يَسْأَلْكُمْ خَيْرَهُ وَ[لَمْ] يَأْمُرْكُمْ بِشَرِّهِ."



# ZIKATDAYÎN
## MALÊN TÊDE ZİKAT HEYÎ Û NÎSABA ZIKATÊ

**400.** Ji Cabir bin Ebdîllah el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*...Sedeqeya xêrtir ewa ji malê ji îhtiyacê zêde tê dayîn e.*"

(D1673 Ebû Dawûd, Zekat, 39)



**401.** Salim bin Ebdîllah (r.) bi rêya bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Miqdarê zikata mehsûlên bi ava baranê û ava kehniya an jî jiber xwe hatin avdan dehyek.e. Zikata mehsûlên bi dewara an jî bi dewla hatîn avdan nîvê dehyekê ye (bîstyek e).*"

(B1483 Buxarî, Zekat, 55)



**402.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: "*Zikat di wî malê salek di ser re derbas nebûyî de tune ye.*"

(İM1792 Ibn Maceh, Zekat, 5)



**403.** Ji Ebdîllah bin Muawiye el-Xadirî (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Sê tişt hene kesê wan bike bêguman ewî zewqa îmanê sitandiye: Bi baweriya ku ji bilî Xwedê/Ellah tu xweda tuneh in tenê ji Xwedê re îbadet kirin; dayîna zikata malê xwe bi dilxweşî û bê tereddud û bi rêz û nîzam her sal; dayîna zikatê ji malên xwe yê weset ne ku pîr an zeîf an giro an jî nexweş an jî bêşîra bêqîmet. Bêguman Xwedê emrê we nekiriye ku hûn malê xwe yê herî baş bidin û emrê we nekiriye ku hûn ya pîs bidin.*"

(D1582 Ebû Dawûd, Zekat, 5)



٤٠٤- أَنَّ مُعَاذًا قَالَ: بَعَثَنِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "...فَإِيَّاكَ وَكَرَائِمَ أَمْوَالِهِمْ وَاتَّقِ دَعْوَةَ الْمَظْلُومِ فَإِنَّهُ لَيْسَ بَيْنَهَا وَبَيْنَ اللَّهِ حِجَابٌ."

# ZIKAT
## HEQÊ FEQÎRA YE

٤٠٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَيْسَ الْمِسْكِينُ بِالَّذِى تَرُدُّهُ التَّمْرَةُ وَالتَّمْرَتَانِ وَلاَ اللُّقْمَةُ وَاللُّقْمَتَانِ إِنَّ الْمِسْكِينَ الْمُتَعَفِّفُ اقْرَءُوا إِنْ شِئْتُمْ: ﴿لاَ يَسْأَلُونَ النَّاسَ إِلْحَافًا﴾."



٤٠٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ تَحِلُّ الصَّدَقَةُ لِغَنِيٍّ وَلاَ لِذِى مِرَّةٍ سَوِيٍّ."



٤٠٧- عَنْ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ بَعَثَ مُعَاذًا إِلَى الْيَمَنِ فَقَالَ: "...فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ صَدَقَةً فِي أَمْوَالِهِمْ تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ وَتُرَدُّ عَلَى فُقَرَائِهِمْ."



٤٠٨- عَنْ سَلْمَانَ بْنِ عَامِرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الصَّدَقَةَ عَلَى الْمِسْكِينِ صَدَقَةٌ وَعَلَى ذِى الرَّحِمِ اثْنَتَانِ: صَدَقَةٌ وَصِلَةٌ."

**404.** Muaz (bin Cebel) (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê ez (ji bo wezîfa walîtiyê) şiyandim (Yemenê). Vêca ji min re got: "*...Nebe tu malên wa yên qenc bi zikatî ji wan bistinî! Xwe ji bêduayiya mezlûmî biparêze. Lewra di neqeba duaya mezlûmî û Xwedê de perde nîn e.*"

(M121 Muslim, Îman, 29)

# ZIKAT
## HEQÊ FEQÎRA YE

**405.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Miskîn ne ew kesê ku îhtiyaciya xwe bi xurmekî an bi du xurma an jî bi luqmeyek bi du luqma pêktîne. Esas miskîn (digel ku îhtiyaciya wî heye jî) ewê ku (ji fihêtî û heya xwe) ji xwestinê, xwe dûr dike ye. Hûn bixwazin vê ayetê bixwênin: 'Ji însanên bêrû naxwazin'.*" (Beqere, 2/273) ,

(M2394 Muslim, Zekat, 102; B1476 Buxarî, Zekat, 53)



**406.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Zikat ji kesê dewlemend û ji kesê bi hêz û sihheta wî li cih re ne helal e.*"

(D1634 Ebû Dawûd, Zekat, 24; T652 Tirmizî, Zekat, 23)



**407.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Muaz (r.) şiyande Yemenê û jê re got: "*... Bi wan bide zanîn ku Xwedê di malê wan de sedeqe ferz kiriye, ku ji dewlemendan bistînin û bidine feqîran.*"

(B1395 Buxarî, Zekat, 1)



**408.** Ji Selman bin 'Amir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Bêguman sedeqedana feqîrekî sedeqeyek e, (belê) sedeqedana eqrebayan du sedeqe ne: sedeqe û sile-i rehmê.*"

(N2583 Nesaî, Zekat, 82; T658 Tirmizî, Zekat, 26)

# SEDEQE
## NÎŞANÊ SEDAQETÊ YE

٤٠٩- عَنْ سَعِيدِ بْنِ أَبِى بُرْدَةَ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ صَدَقَةٌ."



٤١٠- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "كُلُّ مَعْرُوفٍ صَدَقَةٌ."



٤١١- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ الصَّدَقَةَ لَتُطْفِئُ غَضَبَ الرَّبِّ وَتَدْفَعُ مِيتَةَ السُّوءِ."



٤١٢- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ ذَكَرَ النَّارَ فَتَعَوَّذَ مِنْهَا، وَأَشَاحَ بِوَجْهِهِ ثَلاَثَ مِرَارٍ، ثُمَّ قَالَ: "اتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ، فَإِنْ لَمْ تَجِدُوا، فَبِكَلِمَةٍ طَيِّبَةٍ."



٤١٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ لِلنَّبِيِّ ﷺ : يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَيُّ الصَّدَقَةِ أَفْضَلُ؟ قَال: "أَنْ تَصَدَّقَ وَأَنْتَ صَحِيحٌ حَرِيصٌ، تَأْمُلُ الْغِنَى، وَتَخْشَى الْفَقْرَ، وَلاَ تُمْهِلْ حَتَّى إِذَا بَلَغَتِ الْحُلْقُومَ..."



# SEDEQE
## NÎŞANÊ SEDAQETÊ YE

**409.** Seîd bin Ebî Burde (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sedeqe li ser her Misilmanî ferz e."*

(M2333 Muslim, Zekat, 55; B1445 Buxarî, Zekat, 30)



**410.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her qencî sedeqe ye."*

(B6021 Buxarî, Edeb, 33)



**411.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman sedeqe enra Xwedê vedimirîne û mirina pîs dûr dike."*

(T664 Tirmizî, Zekat, 28)



**412.** Ji 'Edî bin Hatîm (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) behsa cehnemê kir û ji ezabê wê xwe siparte Xwedê û piştî ku sê cara berê xwe zivirand wiha keremkir: *"Bi qetek xurmeyekî jî be xwe ji cehnemê biparêzin. Heke we ev jî nekarî, bi gotinek xweş (xwe biparêzin.)"*

(M2350 Muslim, Zekat, 68)



**413.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Ya Resûlê Xwedê! Kîjan sedeqe xêrtir e? Resûlê Xwedê (s.) got: *"Wextê tu li ser sihheta xwe û xwestekê peydakirina mal be, hêviya dewlemendiyê dike û ji feqîriyê bi tirs be tu sedeqe bide ye. Vêca sedeqe dayînê nehêle heta ku rih bigihe gewriya te. (texîr neke)"*

(B2748 Buxarî, Wesaya, 7)



٤١٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ يَزِيدَ سَمِعَ أَبَا مَسْعُودٍ الْبَدْرِيَّ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "نَفَقَةُ الرَّجُلِ عَلَى أَهْلِهِ صَدَقَةٌ."

# HIBE

## DAYÎNA BI DILXWEŞÎ

٤١٥- عَنْ سَالِمٍ، عَنْ أَبِيهِ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...مَنْ كَانَ فِى حَاجَةِ أَخِيهِ كَانَ اللَّهُ فِى حَاجَتِهِ..."



٤١٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَنْظَرَ مُعْسِرًا أَوْ وَضَعَ لَهُ، أَظَلَّهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ تَحْتَ ظِلِّ عَرْشِهِ، يَوْمَ لاَ ظِلَّ إِلاَّ ظِلُّهُ."



٤١٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ وَابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَحِلُّ لِرَجُلٍ أَنْ يُعْطِيَ عَطِيَّةً أَوْ يَهَبَ هِبَةً فَيَرْجِعَ فِيهَا إِلاَّ الْوَالِدَ فِيمَا يُعْطِى وَلَدَهُ..."

**414.** Ji Ebdullah bin Yezîd (r.) hatiye ragihandin ku ji Ebû Mesûd el-Bedrî (r.) bihîstiye digot: Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ku şexsek malê xwe, ji ehlê mala xwe re xerc bike ev jêre sedeqe ye."*

(B4006 Buxarî, Mexazî, 12)

# HIBE
## DAYÎNA BI DILXWEŞÎ

**415.** Salim (r.) bi rêya bavê xwe (Ebdullah bin Umer) rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê îhtiyaciya birayê xwe pêkbîne, wê Xwedê jî îhtiyaciya wî pêkbîne..."*

(M6578 Muslim, Birr we sile, 58)



**416.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê muhletê bide deyndarekî destteng an jî wî ji deynê wî azade bike, wê Xwedê Roja Qiyametê ew roja ji bilî siha Wî tu sih tuneyî wî kesî bixe bin siha xwe de."*

(T1306 Tirmizî, Buyû', 67; M7512 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 74)



**417.** Ji Ibn Umer û ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne helal e ji kesekî re ku hediyekî bide an jî xêrekî bike, piştre jê vegere. Belê bav ji tişta dayî zarokê xwe kare vegere."*

(D3539 Ebû Dawûd, Buyû', (Îcare), 81)

# QURBAN
## WESÎLA NÊZÎKBÛNA XWEDÊ

٤١٨- عَنِ الْبَرَاءِ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَخْطُبُ فَقَالَ: "إِنَّ أَوَّلَ مَا نَبْدَأُ بِهِ فِي يَوْمِنَا هَذَا أَنْ نُصَلِّيَ، ثُمَّ نَرْجِعَ فَنَنْحَرَ، فَمَنْ فَعَلَ فَقَدْ أَصَابَ سُنَّتَنَا."

٤١٩- عَنْ عَائِشَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا عَمِلَ آدَمِيٌّ مِنْ عَمَلٍ يَوْمَ النَّحْرِ أَحَبَّ إِلَى اللَّهِ مِنْ إِهْرَاقِ الدَّمِ إِنَّه لَيَئْتِي يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِقُرُونِهَا وَأَشْعَارِهَا وَأَظْلاَفِهَا وَإِنَّ الدَّمَ لَيَقَعُ مِنَ اللَّهِ بِمَكَانٍ قَبْلَ أَنْ يَقَعَ مِنَ الْأَرْضِ فَطِيبُوا بِهَا نَفْسًا."

٤٢٠- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ قَالَ: ثِنْتَانِ حَفِظْتُهُمَا عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الْإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ فَإِذَا قَتَلْتُمْ فَأَحْسِنُوا الْقِتْلَةَ وَإِذَا ذَبَحْتُمْ فَأَحْسِنُوا الذَّبْحَ وَلْيُحِدَّ أَحَدُكُمْ شَفْرَتَهُ فَلْيُرِحْ ذَبِيحَتَهُ."

# QURBAN
## WESÎLA NÊZÎKBÛNA XWEDÊ

**418.** Ji Berra' (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst di xutbê de digot: *"Emê îro pêşî dest bi nimêja eydê kin, piştre emê bizivirin û qurbana xwe serjê kin. Kesê bi vî awayî bike ewî xwe bi sinneta me girtiye."*

(B951 Buxarî, 'Îdeyn, 3)



**419.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ademiyekî roja (eyda) Qurbanê ji qurban serjêkirinê zehftir Xwedê razî bike emelek nekiriye. Qurban, Roja Qiyametê bi sitirh û mû û neynûkê xwe ve (wek xêr) jê re tê. Hêj xwîna wê nerijihayî erdê Xwedê wê qebûl dike. Vêca bila dilê we bi vî emelî xweş û şa be."*

(T1493 Tirmizî, Edahî, 1)



**420.** Şeddad bin Ews (r.) gotiye: "Ez ji Resûlê Xwedê (s.) hînê du tişta bûm. Ewî wiha keremkir: *"Xwedê di her kar û barî de îhsan (sipehî çêkirin) ferz kiri ye. Wextê we (ji ber sebebek meşru) kuştin kir xweşik (bêîşkence) bikujin, wextê we (heywanek) serjê kir xweşik serjê bikin û (dema yekî ji we xwest heywanekî serjê bike) bila kêra xwe tûj bike û heywana serjêkirî rihet bike."*

(M5055 Muslim, Sayd we zebaih, 57; D2814 Ebû Dawûd, Dahaya, 10–11)



٤٢١- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: ضَحَّى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ عِيدٍ بِكَبْشَيْنِ فَقَالَ حِينَ وَجَّهَهُمَا: "إِنِّى وَجَّهْتُ وَجْهِيَ لِلَّذِى فَطَرَ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضَ حَنِيفًا وَمَا أَنَا مِنَ الْمُشْرِكِينَ إِنَّ صَلاَتِى وَنُسُكِى وَمَحْيَاىَ وَمَمَاتِى لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ لاَ شَرِيكَ لَهُ وَبِذَلِكَ أُمِرْتُ وَأَنَا أَوَّلُ الْمُسْلِمِينَ اللَّهُمَّ مِنْكَ وَلَكَ عَنْ مُحَمَّدٍ وَأُمَّتِهِ."



٤٢٢- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ: قَالَ أَصْحَابُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ : يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا هَذِهِ الْأَضَاحِيُّ؟ قَالَ: "سُنَّةُ أَبِيكُمْ إِبْرَاهِيمَ."

# NEZIR
## PÊKANÎNA SOZÊ

٤٢٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ امْرَأَةً نَذَرَتْ أَنْ تَحُجَّ فَمَاتَتْ، فَأَتَى أَخُوهَا النَّبِيَّ ﷺ فَسَأَلَهُ عَنْ ذَلِكَ، فَقَالَ: "أَرَأَيْتَ لَوْ كَانَ عَلَى أُخْتِكَ دَيْنٌ أَكُنْتَ قَاضِيَهُ؟" قَالَ: نَعَمْ. قَالَ: "فَاقْضُوا اللَّهَ فَهُوَ أَحَقُّ بِالْوَفَاءِ."



٤٢٤- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ : "مَنْ نَذَرَ أَنْ يُطِيعَ اللَّهَ فَلْيُطِعْهُ، وَمَنْ نَذَرَ أَنْ يَعْصِيَهُ فَلاَ يَعْصِهِ."



**421.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) roja eydê, du baran qurban kirin û dema berê wan da qiblê got: *"Bêguman min bi rûyê xwe berê xwe da wî Xwedayê ku erd û asîman ji tunehî anîne heyînê û ez henîf im (berê min her li heqiyê ye) û ne ji mişrika me. Bêguman nimêja min, qurbana min, jiyan û mirina min (hemî) ji rebbê alemê Ellah re ne. Ew bê şirîk e. Emrê min bi vê hatiye kirin û ez Misilmanê yekem im. Ya Rebbî! (ev qurban) ji Te ye û ji dêl Muhemmed û ji dêl ummeta wî ji Te re ye."*

(ÎM3121 Ibn Maceh, Edahî, 1; D2795, Ebû Dawûd, Dahaya, 3-4)



**422.** Zeyd bin Erqem (r.) dibêje: "Sehabiyên Resûlê Xwedê (s.) gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma ev qurban çine?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Sinneta bavê we Îbrahîm e."*

(ÎM3127 Ibn Maceh, Edahî, 3: HM19498 Ibn Hanbel, IV, 368)

# NEZIR
## PÊKANÎNA SOZÊ

**423.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Jinekî nezir kir ku here heccê, belê hê neçûyî mir. Vêca birayê wê hate cem Pêxember (s.) û pirsa vî halî jê kir. Resûlê Xwedê (s.) got: "*Ma heke deynek li ser xuha te heba ma teyê daba?*" Ewî got: "Belê". Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Wî çaxî deynê Xwedê bidin. Lewra Xwedê zehftir layîqê wefakirina soza jê re hatî dayîne ye."*

(N2633 Nesaî, Menasîku'l-hec, 7)



**424.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê nezir kiribe ku biya/îtaa Xwedê bike, bila bike. Kesê nezir kiribe ku bêemriya Xwedê bike, bila neke."*

(B6696 Buxarî, Eyman we nuzûr, 28)



٤٢٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "... وَمَنْ نَذَرَ نَذْرًا أَطَاقَهُ فَلْيَفِ بِهِ"



٤٢٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ النَّذْرَ لاَ يُقَرِّبُ مِنِ ابْنِ آدَمَ شَيْئًا لَمْ يَكُنِ اللَّهُ قَدَّرَهُ لَهُ، وَلَكِنِ النَّذْرُ يُوَافِقُ الْقَدَرَ، فَيُخْرَجُ بِذَلِكَ مِنَ الْبَخِيلِ مَا لَمْ يَكُنِ الْبَخِيلُ يُرِيدُ أَنْ يُخْرِجَ."

# AZADÎ Û ÎBADET
## MESÛLIYETA BI QEDER TAQET

٤٢٧- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ رضي الله عنه قَالَ: كَانَتْ بِى بَوَاسِيرُ فَسَأَلْتُ النَّبِيَّ ﷺ عَنِ الصَّلاَةِ. فَقَالَ: "صَلِّ قَائِمًا، فَإِنْ لَمْ تَسْتَطِعْ فَقَاعِدًا، فَإِنْ لَمْ تَسْتَطِعْ فَعَلَى جَنْبٍ."



٤٢٨- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنهما قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى سَفَرٍ فَرَأَى رَجُلاً قَدِ اجْتَمَعَ النَّاسُ عَلَيْهِ، وَقَدْ ظُلِّلَ عَلَيْهِ، فَقَالَ: "مَا لَهُ." قَالُوا: رَجُلٌ صَائِمٌ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ الْبِرُّ أَنْ تَصُومُوا فِى السَّفَرِ."



٤٢٩- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: رَخَّصَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِلْحُبْلَى الَّتِى تَخَافُ عَلَى نَفْسِهَا أَنْ تُفْطِرَ وَلِلْمُرْضِعِ الَّتِى تَخَافُ عَلَى وَلَدِهَا.



**425.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Kesê nezra tiştek ku taqeta wî pê tê kiribe, bila nezra xwe pêkbîne.*"

(ÎM2128 Ibn Maceh, Keffaret, 17)



**426.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman nezir tişteka ku Xwedê teqdîr nekirî nêzî însanî nake. Belê ew tişta nezir kirî weke teqdîra Xwedê derdikeve (û çêdibe). Bi vî şiklî ew malê ku mêrkê qesîs ne dixwest bide ji destê wî derdikeve."*

(M4243 Muslim, Nezr, 7)

# AZADÎ Û ÎBADET
## MESÛLIYETA BI QEDER TAQET

**427.** 'Imran bin Husayn (r.) dibêje: "Bi min re bawesîr hebû. Min pirsa nimêjê (ka çawa bikim) ji Resûlê Xwedê (s.) kir. Resûlê Xwedê (s.) got: *"Şipiya nimêj bike, heke te ne karî rûniştî bike, heke te nekarî li ser teniştê dirêjkirî bike."*

(B1117 Buxarî, Teqsîru's-salat, 19)



**428.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di seferekî de bû. Vêca zilamek dît ku mirov li derdora wî kom bûbûn û li ser wî sihik çêkiribûn. Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *"Derdê wî çi ye?"* Gotin: "Ew zilam bi roji ye." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Di seferê de rojîgirtin ne xêr e."*

(M2612 Muslim, Siyam, 92)



**429.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ruxseta rojîxwarina (rojiya Remezanê) daye jina bi hemle ya ku ditirse zererê bibîne û ruxset daye jina bi dergûş a ditirse zerer bighe zaroka wê."

(ÎM1668 Ibn Maceh, Siyam, 12)



٤٣٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ أَنْ تُؤْتَى رُخَصُهُ، كَمَا يَكْرَهُ أَنْ تُؤْتَى مَعْصِيَتُهُ."



٤٣١- عَنْ أَبِي مُوسَى قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا بَعَثَ أَحَدًا مِنْ أَصْحَابِهِ فِي بَعْضِ أَمْرِهِ قَالَ: "بَشِّرُوا وَلاَ تُنَفِّرُوا، وَيَسِّرُوا وَلاَ تُعَسِّرُوا."

# ÎBADETA DI SEFERÊ DE
## RIHETIYÊN HATÎN NASKIRIN JI RÊWIYA RE

٤٣٢- عَنْ خُزَيْمَةَ بْنِ ثَابِتٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْمَسْحُ عَلَى الْخُفَّيْنِ لِلْمُسَافِرِ ثَلاَثَةُ أَيَّامٍ وَلِلْمُقِيمِ يَوْمٌ وَلَيْلَةٌ."



٤٣٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَجْمَعُ بَيْنَ صَلاَةِ الظُّهْرِ وَالْعَصْرِ إِذَا كَانَ عَلَى ظَهْرِ سَيْرٍ، وَيَجْمَعُ بَيْنَ الْمَغْرِبِ وَالْعِشَاءِ.



٤٣٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا ارْتَحَلَ قَبْلَ أَنْ تَزِيغَ الشَّمْسُ أَخَّرَ الظُّهْرَ إِلَى وَقْتِ الْعَصْرِ، ثُمَّ يَجْمَعُ بَيْنَهُمَا، وَإِذَا زَاغَتْ صَلَّى الظُّهْرَ ثُمَّ رَكِبَ.



**430.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê hezdike ku emel bi ruxsetên wî were kirin, Çewa ku naxwaze bêemriya wî were kirin."*

(HM5866 Ibn Hanbel, II, 108)



**431.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) sehabiyek xwe dişande wezîfeyekî digot: *"Mizgîniyê bidin nefretê nedin kirinê; asan bikin zehmet nekin."*

(M4525 Muslim, Cîhad we Siyer, 6)

# ÎBADETA DI SEFERÊ DE
## RIHETIYÊN HATÎN NASKIRIN JI RÊWIYA RE

**432.** Ji Xuzeyme bin Sabit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Middetê mesihkirina ser xufikan ji rêwiyan re sê roj e û ji muqîmî re roj û şevek e."*

(D157 Ebû Dawûd, Teharet, 60)



**433.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) di seferê de nimêja nîvro û nimêja esrê cem' dikir (bi hev re di wextê yekî ji wan de dikir) û nimêja mexrib û nimêja işayê jî cem' dikir."

(B1107 Buxarî, Teqîru's-salat, 13)



**434.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) berî ku bibe wextê nîvro derketiba seferê, nimêja nîvro texîrê demê nimêja esrê dikir, piştre herdû nimêj bi hev re dikir. Dema di wextê nîvro de derketiba seferê, nimêja nîvro dikir piştre bi rê diket."

(B1111 Buxarî, Teqsîru's-salat,15)



٤٣٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَرَجَ مِنْ مَكَّةَ إِلَى الْمَدِينَةِ لاَ يَخَافُ إِلاَّ رَبَّ الْعَالَمِينَ يُصَلِّي رَكْعَتَيْنِ.



٤٣٦- عَنْ حَمْزَةَ ﴿بْنِ عَمْرٍو﴾ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنِ الصَّوْمِ فِي السَّفَرِ قَالَ: "إِنْ شِئْتَ أن تَصُومَ فَصُمْ وَإِنْ شِئْتَ أن تُفْطِرَ فَأَفْطِرْ."

# EZÎMET Û RUXSET
## HUKMÊN ESASÎ Û REWŞÊN TEYBET

٤٣٧- أَخْبَرَنِي جَابِرُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ... قَال: "إِنَّهُ لَيْسَ مِنَ الْبِرِّ أَنْ تَصُومُوا فِي السَّفَرِ وَعَلَيْكُمْ بِرُخْصَةِ اللَّهِ الَّتِي رَخَّصَ لَكُمْ فَاقْبَلُوهَا."



٤٣٨- عَنْ حَمْزَةَ بْنِ عَمْرٍو الْأَسْلَمِيِّ رضي الله عنه أَنَّهُ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَجِدُ بِي قُوَّةً عَلَى الصِّيَامِ فِي السَّفَرِ، فَهَلْ عَلَيَّ جُنَاحٌ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "هِيَ رُخْصَةٌ مِنَ اللَّهِ، فَمَنْ أَخَذَ بِهَا فَحَسَنٌ، وَمَنْ أَحَبَّ أَنْ يَصُومَ فَلاَ جُنَاحَ عَلَيْهِ."



٤٣٩- قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ: قَالَ لِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ..." وَإِيَّاكُمْ وَالْغُلُوَّ فِي الدِّينِ فَإِنَّمَا أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمُ الْغُلُوُّ فِي الدِّينِ."



**435.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) ji Mekkeyê berê xwe da Medînê bi rêket û ji bilî Rebbê Alemê ji tu kesî ne ditirsiha, (digel vê) nimêjên xwe du riket du reiket dikir."

(N1436 Nesaî, Teqsîru's-salat, 1)



**436.** Hemze bin 'Emr (r.) dibêje: "Min pirsa (hukmê) rojîgirtina di seferê de ji Resûlê Xwedê (s.) kir. Ewî got: *'Heke tu bixazî rojî bigirî bigire, heke tu bixazî rojiya xwe bixwî bixwe.'"*

(N2298 Nesaî, Siyam, 56)

# EZÎMET Û RUXSET
## HUKMÊN ESASÎ Û REWŞÊN TEYBET

**437.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rojîgirtina we di seferê de ne xêr e. Bi ruxsetên ku Xwedê dayîn we emel bikin û wan qebûl bikin."*

(N2260 Nesaî, Siyam, 47)



**438.** Ji Hemze bin 'Emr el-Eslemî (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) re got: "Ya Resûlê Xwedê! Ez di seferê de qeweta rojîgirtinê di xwe de dibînim. Ma zerer heye (ez rojî bigirim) ?" Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ew ruxseta Xwedê ye, kesê xwe pê bigire û pê emel bike baş e. Kesê bixwaze rojî bigire zerera wê nîn e.'"*

(M2629 Muslim, Siyam, 107)



**439.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: "... *Xwe ji zêdegaviya di dîn de dûr bikin. Bêguman zêdegaviya di dîn de, qewmên beriya hewe helak kir."*

(N3059 Nesaî, Menasiku'l-hec, 217)



٤٤٠- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهَا قَالَتْ: مَا خُيِّرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بَيْنَ أَمْرَيْنِ إِلاَّ أَخَذَ أَيْسَرَهُمَا مَا لَمْ يَكُنْ إِثْمًا، فَإِنْ كَانَ إِثْمًا كَانَ أَبْعَدَ النَّاسِ مِنْهُ...



٤٤١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ أَنْ تُؤْتَى رُخَصُهُ كَمَا يَكْرَهُ أَنْ تُؤْتَى مَعْصِيَتُهُ."

# ITÎDALA DI IBADETÊ DE
## EBDÎTIYEK JI ZÊDEGAVIYÊ DÛR Û BI PÎVAN

٤٤٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ... "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! إِيَّاكُمْ وَالْغُلُوَّ فِى الدِّينِ، فَإِنَّمَا أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمُ الْغُلُوُّ فِى الدِّينِ."



٤٤٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: إِنَّ الدِّينَ يُسْرٌ، وَلَنْ يُشَادَّ الدِّينَ ﴿أَحَدٌ﴾ إِلاَّ غَلَبَهُ، فَسَدِّدُوا وَقَارِبُوا وَأَبْشِرُوا..."



٤٤٤- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ ... قَالَ: "...عَلَيْكُمْ بِمَا تُطِيقُونَ، فَوَاللَّهِ لاَ يَمَلُّ اللَّهُ حَتَّى تَمَلُّوا..."



**440.** Xanima Resûlê Xwedê Aîşe (r.) gotiye: "Çi dema heqê bijartina yekî ji du karan bihata dayîn ji Resûlê Xwedê re, heke ne guneh ba, mitleqa karê hêsantir dibijart. Heke guneh bûya, însanê herî ji wî karî dûr ew bû

(M6045 Muslim, Feda'il, 77)



**441.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê hezdike ku emel bi ruxsetên Wî were kirin, çewa ku naxwaze bêemriya wî were kirin."*

(HM5866 Ibn Hanbel, II, 108)

# ITÎDALA DI IBADETÊ DE
## EBDÎTIYEK JI ZÊDEGAVIYÊ DÛR Û BI PÎVAN

**442.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: "*... Xwe ji zêdegaviya di dîn de dûr bikin. Bêguman zêdegaviya di dîn de, qewmên beriya hewe helak kir.*"

(ÎM3029 Ibn Maceh, Menasik, 63; N3059 Nesaî, Menasiku'l-hec, 217)



**443.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman dîn hêsan e. Kî mirovê dîn zehmet bike, wê ji pêkanîna dîn aciz bibe. Vêca (di dîn de) zêdegaviya nekin, rêya rasterast bigirin, (ji bo mukâfata ku hûn ji dêl emelên qenc bistînin) bi keyf û şabin..."*

(B39 Buxarî, Îman, 29)



**444.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Emelê ku hewe taqet lê heyî bikin. Wellahî hûn aciz dibin lê Xwedê aciz nabe..."*

(B43 Buxarî, Îman, 32; M1834 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 221)



٤٤٥- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهَا أَنَّهَا قَالَتْ: سُئِلَ النَّبِيُّ ﷺ : أَيُّ الْأَعْمَالِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ؟ قَالَ: "أَدْوَمُهَا وَإِنْ قَلَّ." وَقَالَ: "اكْلَفُوا مِنَ الْأَعْمَالِ مَا تُطِيقُونَ."



٤٤٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ : "إِنَّ لِكُلِّ شَيْءٍ شِرَّةً وَلِكُلِّ شِرَّةٍ فَتْرَةً، فَإِنْ كَانَ صَاحِبُهَا سَدَّدَ وَقَارَبَ فَارْجُوهُ وَإِنْ أُشِيرَ إِلَيْهِ بِالْأَصَابِعِ فَلاَ تَعُدُّوهُ."

**445.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: Ma Xwedê zehftir hez ji kîjan emelî dike?" Pêxember (s.) got: *"Çendîn hindik jî be emelê zehftir dewam li ser tê kirin e."* û piştre Pêxember (s.) got: *"Bi qeder taqeta xwe emel bigirin ser xwe."*

(B6465 Buxarî, Rîqaqk, 18; M1828 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 216)



**446.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman her tiştek jê re coşînek heye û ji her coşînê re sistayiyek heye. Heke kesê di yekî ji van herdu hala de itîdalê bigire û wan nêzîkê hev bike, hêviya qencî û xilasiyê jê bikin, heke (van ne ji dil bike) bi tiliyan îşaret balêve were kirin ewî (ji qenca) hesab nekin."*

(T2453 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 21)

٤٤٧- عَـنْ أَبِـي هُرَيْـرَةَ قَـالَ: قَـالَ رَسُـولُ اللَّـهِ ﷺ : "إِنَّمَـا بُعِثْـتُ لِأُتَمِّـمَ صَالِـحَ الْأَخْـلَاقِ."



٤٤٨- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ، أَنَّهُ كَانَ إِذَا قَامَ إِلَى الصَّلاَةِ قَالَ: "... وَاهْدِنِى لِأَحْسَنِ الأَخْلاَقِ، لاَ يَهْدِى لِأَحْسَنِهَا إِلاَّ أَنْتَ، وَاصْرِفْ عَنِّى سَيِّئَهَا، لاَ يَصْرِفُ عَنِّى سَيِّئَهَا إِلاَّ أَنْتَ..."



٤٤٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَكْمَلُ الْمُؤْمِنِينَ إِيمَانًا أَحْسَنُهُمْ خُلُقًا."



٤٥٠- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اتَّقِ اللَّهَ حَيْثُمَا كُنْتَ، وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا، وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ."



٤٥١- حَدَّثَنَا أَيُّوبُ بْنُ مُوسَى عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا نَحَلَ وَالِدٌ وَلَدًا مِنْ نَحْلٍ أَفْضَلَ مِنْ أَدَبٍ حَسَنٍ."

# EXLAQÊ XWEŞ
## KAKILA ÎSLAMÊ

**447.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez tenê ji bo temamkirina exlaqê baş hatime şiyandin."*

(HM8939 Ibn Hanbel, II, 381)



**448.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) dirabû nimêjê digot: "*... (Ya Rebbî!) Berê min bide exlaqê herî baş û xweş. Ji bilî Te kesekî ku bigihîne exlaqê xweş tunî ne. Exlaqê xirab ji min dûr ke. Ji bilî Te keseke exlaqê xirab ji min dûr ke tune ye...*""

(M1812 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 201)



**449.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji layê îmanê ve kamiltirê mumînan, exlaqxweştirê hewe ye."*

(D4682 Ebû Dawûd, Sunnet, 15)



**450.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji minre got: '*Tu li kûderê bî teqwatiya Xwedê bike (di pêşberê Xwedê de mesûliyeta xwe zanibe) Piştî xirabiyê qenciyeke bike ku wê xirabiyê rake. Bi mirovan re bi exlaqê xweş tevbigere.*'"

(T1987 Tirmizî, Birr we sile, 55)



**451.** Eyyûb bin Mûsa (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu bavî ji terbiya baş çêtir tu hediye ne daye zaroka xwe."*

(T1952 Tirmizî, Birr we sile, 33)

# NIYET Û EMEL
## EMEL Lİ GORÎ NIYETA NE

٤٥٢- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّمَا الأَعْمَالُ بِالنِّيَّةِ، وَإِنَّمَا لِامْرِئٍ مَا نَوَى، فَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ إِلَى اللَّهِ وَرَسُولِهِ، فَهِجْرَتُهُ إِلَى اللَّهِ وَرَسُولِهِ، وَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ لِدُنْيَا يُصِيبُهَا أَوِ امْرَأَةٍ يَتَزَوَّجُهَا، فَهِجْرَتُهُ إِلَى مَا هَاجَرَ إِلَيْهِ."



٤٥٣- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ ... ثُمَّ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَقْبَلُ مِنَ الْعَمَلِ إِلاَّ مَا كَانَ لَهُ خَالِصًا وَابْتُغِيَ بِهِ وَجْهُهُ."



٤٥٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٤٥٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: إِذَا هَمَّ عَبْدِي بِحَسَنَةٍ وَلَمْ يَعْمَلْهَا كَتَبْتُهَا لَهُ حَسَنَةً، فَإِنْ عَمِلَهَا كَتَبْتُهَا عَشْرَ حَسَنَاتٍ إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْفٍ، وَإِذَا هَمَّ بِسَيِّئَةٍ وَلَمْ يَعْمَلْهَا لَمْ أَكْتُبْهَا عَلَيْهِ، فَإِنْ عَمِلَهَا كَتَبْتُهَا سَيِّئَةً وَاحِدَةً."

# NIYET Û EMEL
## EMEL LÎ GORÎ NIYETA NE

**452.** Ji Umer bin el-Xettab (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman emel li gor niyetê ne. Ji her kesî re tişta ku niyet kirî heye. Kesê ji bo Xwedê û Resûlê wî hicret kirî, hicreta wî bal Xwedê û Resûlê Wî ve ye. Kesê hicreta wî ji bo bidestxistina (feydeyek) dinyayê be an jî ji bo nîkahkirina jineke be, hicreta wî bal wê tişta bûyî sebebê hicretê ve ye."*

(M4927 Muslim, Îmare, 155; B1 Buxarî, Bed'u'l'wehy, 1)



**453.** Ebû Umame el-Bahilî (r.) gotiye: "Zilamek hate cem Resûlê Xwedê (s.) (çend pirs pirsîn) ... piştre Resûlê Xwedê (s.) wiha got: *'Xwedê tenê emelê bi semîmî û ji bo bi destkirina rizaya Xwedê hatîn kirin qebûl dike.'*"

(N3142 Nesaî, Cihad, 24)



**454.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike."*

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**455.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle gotiye: 'Dema ebdê min niyeta kirina emelek qenc kir û nekarî bike, ez jê re xêrekî dinivîsînim. Belê heke ew emel kir, ezê ji deh xêra heta heftsed xêra nivîsînim. Dema ebdê min niyeta kirina xirabiyekî kir belê nekir, ezê jê re xêrekî nivîsînim. Vêca heke ew xirabî kir ezê jê re gunehekî tenê nivîsînim'."*

(M335 Muslim, Îman, 204; B6491 Buxarî, Rîqaq, 31)

# EMELÊ SALIH
## KARÊ BAŞ, HEREKETA RAST

٤٥٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٤٥٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي بَكْرٍ قَالَ سَمِعْتُ أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ يَقُولُ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "يَتْبَعُ الْمَيِّتَ ثَلاَثَةٌ فَيَرْجِعُ اثْنَانِ وَيَبْقَى وَاحِدٌ يَتْبَعُهُ أَهْلُهُ وَمَالُهُ وَعَمَلُهُ فَيَرْجِعُ أَهْلُهُ وَمَالُهُ وَيَبْقَى عَمَلُهُ."



٤٥٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ بُسْرٍ: أَنَّ أَعْرَابِيًّا قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَنْ خَيْرُ النَّاسِ؟ قَالَ: "مَنْ طَالَ عُمُرُهُ وَحَسُنَ عَمَلُهُ."



٤٥٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "بَادِرُوا بِالأَعْمَالِ فِتَنًا كَقِطَعِ اللَّيْلِ الْمُظْلِمِ، يُصْبِحُ الرَّجُلُ مُؤْمِنًا وَيُمْسِي كَافِرًا، أَوْ يُمْسِي مُؤْمِنًا وَيُصْبِحُ كَافِرًا، يَبِيعُ دِينَهُ بِعَرَضٍ مِنَ الدُّنْيَا."



٤٦٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "قَالَ اللَّهُ ﴿عَزَّ وَجَلَّ﴾: أَعْدَدْتُ لِعِبَادِيَ الصَّالِحِينَ مَا لاَ عَيْنٌ رَأَتْ، وَلاَ أُذُنٌ سَمِعَتْ، وَلاَ خَطَرَ عَلَى قَلْبِ بَشَرٍ."

# EMELÊ SALIH
## KARÊ BAŞ, HEREKETA RAST

**456.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike."*

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**457.** Ji Ebdullah bin Ebî Bekir (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Enes bin Malik (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Sê tişt li pey mirî diçin: Dudu ji wan şûnde dizivirin û yek dimîne; Xweyiyê wî, malê wî û emelê wî. Vêca xweyî û malê wî şûnde dizivirin û emelê wî pêre dimîne."*

(M7424 Muslim, Zuhd we reqa'îq, 5)



**458.** Ji Ebdullah bin Busr (r.) hatiye ragihandin ku bedewiyekî got: "Ya Resûlê Xwedê! Qenctirê însana kî ye?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Kesê umrê wî dirêj û emelê wî salih e."*

(T2329 Tirmizî, Zuhd, 21)



**459.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Berî ku fitneyên weke şeva tarî ser we de werin, leza kirina emelên (salih) bikin. Lewra wê demê mirov danê sibehê mumin e û danê êvarî kafir e, an jî danê sibehê kafir e û danê êvarî mumin e; dînê xwe difroşe feydeyek dunyewî."*

(M313 Muslim, Îman, 186)



**460.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle gotiye: 'Min ji ebdên xwe yê salih re tiştên wisa hazir kirine, ne çavan dîtî, ne guhan bihîstî ne jî ketî dilê beşerekî."*

(M7132 Muslim, Cennet, sıfata ne'îmiha we ehliha, 2)

# XÊR Û GUNEH
## BEDÊLA EMELAN

٤٦١- عَنْ وَابِصَةَ بْنِ مَعْبَدٍ الْأَسَدِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لِوَابِصَةَ: ... "الْبِرُّ مَا اطْمَأَنَّتْ إِلَيْهِ النَّفْسُ وَاطْمَأَنَّ إِلَيْهِ الْقَلْبُ، وَالْإِثْمُ مَا حَاكَ فِى النَّفْسِ وَتَرَدَّدَ فِى الصَّدْرِ وَإِنْ أَفْتَاكَ النَّاسُ وَأَفْتَوْكَ."



٤٦٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَحْسَنَ أَحَدُكُمْ إِسْلَامَهُ، فَكُلُّ حَسَنَةٍ يَعْمَلُهَا تُكْتَبُ لَهُ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْفٍ، وَكُلُّ سَيِّئَةٍ يَعْمَلُهَا تُكْتَبُ له بِمِثْلِهَا."



٤٦٣- عَنِ الْمُنْذِرِ بْنِ جَرِيرٍ عَنْ أَبِيهِ قَالَ:...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "مَنْ سَنَّ فِى الْإِسْلَامِ سُنَّةً حَسَنَةً فَلَهُ أَجْرُهَا وَأَجْرُ مَنْ عَمِلَ بِهَا بَعْدَهُ مِنْ غَيْرِ أَنْ يَنْقُصَ مِنْ أُجُورِهِمْ شَيْءٌ وَمَنْ سَنَّ فِى الْإِسْلَامِ سُنَّةً سَيِّئَةً كَانَ عَلَيْهِ وِزْرُهَا وَوِزْرُ مَنْ عَمِلَ بِهَا مِنْ بَعْدِهِ مِنْ غَيْرِ أَنْ يَنْقُصَ مِنْ أَوْزَارِهِمْ شَيْءٌ."



٤٦٤- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اتَّقِ اللَّهَ حَيْثُ مَا كُنْتَ وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ."

# XÊR Û GUNEH
## BEDÊLA EMELAN

**461.** Ji Wabise bin Me'bed el-Esedî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re got: *"Xêr ew e ku nefs pê rihet be û dil li ser bisekinê. Guneh jî ew e ku di dil de nesekine û di singê de jî here û were (tereddudê çêke, nerihet bike) çendî mirov fetwayê bidin jî (guh li wan nedêre)."*

(DM2561 Darimî, Buyû', 2)



**462.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi dema yekî ji we xweşik emel bi Îslamê kir, ji bedêla çi emelê qencê dike, jê re bi qas emelê wî ji deh xêran heta heftsed xêran tête nivîsandin. Ji bedêla çi xirabiya ku dike ve jê re gunehek biqasî wê xirabiyê tête nivîsandin."*

(B42 Buxarî, Îman, 31)



**463.** Munzir bin Cerîr (r.) bi rêya bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê di Îslamê de rêyek qenc veke (pêşîvantiya karekî qenc bike) û piştî wî emel pê were kirin, jê re xêra wan kesên emel pê kirine heye û ji xêra wan kesan tu tişt kêm nabe. Çi kesê di Îslamê de rêyek xirab veke (pêşîvantiya karekî xirab bike) û piştî wî emel pê were kirin, jê re gunehê wan kesên emel pê kirine heye û ji gunehê wan kesan tu tişt kêm nabe."*

(M2351 Muslim, Zekat, 69)



**464.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *"Tu li kûderê bî teqwatiya Xwedê bike (di pêşberê Xwedê de mesûliyeta xwe zanibe) Piştî xirabiyê qenciyekê bike ku wê xirabiyê rake. Bi mirovan re bi exlaqê xweş miamele bike."*

(T1987 Tirmizî, Birr ve sile, 55)

# QELB
## ŞAHÊ WELATÊ BEDENÊ

٤٦٥- عَنْ عَامِرٍ قَالَ: سَمِعْتُ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "...أَلاَ وَإِنَّ فِي الْجَسَدِ مُضْغَةً إِذَا صَلَحَتْ صَلَحَ الْجَسَدُ كُلُّهُ، وَإِذَا فَسَدَتْ فَسَدَ الْجَسَدُ كُلُّهُ، أَلاَ وَهِيَ الْقَلْبُ."



٤٦٦- حَدَّثَنِي شَهْر بْن حَوْشَبٍ قَالَ: قُلْتُ لِأُمِّ سَلَمَةَ: يَا أُمَّ الْمُؤْمِنِينَ! مَا كَانَ أَكْثَرُ دُعَاءِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِذَا كَانَ عِنْدَكِ؟ قَالَتْ: كَانَ أَكْثَرُ دُعَائِهِ: "يَا مُقَلِّبَ الْقُلُوبِ! ثَبِّتْ قَلْبِي عَلَى دِينِكَ." قَالَتْ: فَقُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا أَكْثَرُ دُعَائِكَ يَا مُقَلِّبَ الْقُلُوبِ! ثَبِّتْ قَلْبِي عَلَى دِينِكَ؟ قَالَ: "يَا أُمَّ سَلَمَةَ! إِنَّهُ لَيْسَ آدَمِيٌّ إِلاَّ وَقَلْبُهُ بَيْنَ أُصْبُعَيْنِ مِنْ أَصَابِعِ اللَّهِ فَمَنْ شَاءَ أَقَامَ وَمَنْ شَاءَ أَزَاغَ."



٤٦٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٤٦٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ، عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الْعَبْدَ إِذَا أَخْطَأَ خَطِيئَةً نُكِتَتْ فِي قَلْبِهِ نُكْتَةٌ سَوْدَاءُ فَإِذَا هُوَ نَزَعَ وَاسْتَغْفَرَ وَتَابَ سُقِلَ قَلْبُهُ، وَإِنْ عَادَ زِيدَ فِيهَا حَتَّى تَعْلُوَ قَلْبَهُ وَهُوَ الرَّانُ الَّذِي ذَكَرَ اللَّهُ [كَلاَّ بَلْ رَانَ عَلَى قُلُوبِهِمْ مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ]."



# QELB
## ŞAHÊ WELATÊ BEDENÊ

**465.** 'Amir (r.) dibêje: "Min ji Numan bin Beşîr (r.) bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê bihîst wiha digot: '*... Zanibin! Miheqqeq di bedenê de parçeyek goşt heye dema ew parçe rast û sexlem be, beden tev rast û sexlem dibe, dema ew parçe xira bibe beden tev xira dibe. Zanibin! Ew qelb e.*'"'

(B52 Buxarî, Îman, 39)



**466.** Şehr bin Hewşeb (r.) gotiye: "Min ji Ummu Seleme (r.) re got: 'Ey dayika Mumina! Dema Resûlê Xwedê (s.) li ba te bû bi zehfî çi dua dikir?' Ummu Seleme (r.) got: 'Duaya ku zehf dikir ev bû: '*Ey (Xwedayê) qelba dizivirîne!(diguherîne) Qelbê min li ser dînê xwe bisekinîne.*' Ummu Seleme (r.) dibêje: 'Min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Tu çiqas duaya "*Ey (Xwedayê) qelba dizivirîne! Qelbê min li ser dînê xwe bisekinîne.*' zêde dixwênî!' Resûlê Xwedê (s.) got: '*Ey Ummu Seleme! Tu beşer nînin ku qelbê wî ne di neqeba du tiliyên Xwedê de be. Vêca Xwedê, kesê bixwaze qelbê wî li ser îstîqametê dihêle û kesê bixwaze jî qelbê wî şaş dike, ji rê di derxe.*'"



(T3522 Tirmizî, De'ewat, 89)

**467.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike.*"

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**468.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Dema ebdek guneheki bike, li ser qelbê wî deqek reş çêdibe. Heke ji wî gunehî dûr bikeve, îstîxfar û tobe bike qelbê wî (ji wê deqê) tê paqij kirin. Heke vêca dewama kirina gunehî bike, ew deq zêde dibe heta qelbê wî hemiyî digire. Ew zingara ku Xwedê di ayeta 'Nexêr nexêr! Bi rastî kirinên wan qelbê wan zingar kiriye.'* (Mutaffifîn, 83/14) *de behs kirî ev e.*"

(T3334 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 83)



٤٦٩- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ ﷺ : "إِنَّ مِنْ قَلْبِ ابْنِ آدَمَ، بِكُلِّ وَادٍ شُعْبَةً. فَمَنِ اتَّبَعَ قَلْبُهُ الشُّعَبَ كُلَّهَا، لَمْ يُبَالِ اللَّهُ بِأَيِّ وَادٍ أَهْلَكَهُ. وَمَنْ تَوَكَّلَ عَلَى اللَّهِ كَفَاهُ التَّشَعُّبَ."

## HEZKIRIN
### MIROV BI KESÊ JÊ HEZ DIKE RE YE

٤٧٠- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَانَ مِنْ دُعَاءِ دَاوُدَ يَقُولُ: اللَّهُمَّ إِنِّى أَسْأَلُكَ حُبَّكَ وَحُبَّ مَنْ يُحِبُّكَ وَالْعَمَلَ الَّذِى يُبَلِّغُنِى حُبَّكَ، اللَّهُمَّ اجْعَلْ حُبَّكَ أَحَبَّ إِلَيَّ مِنْ نَفْسِى وَأَهْلِى وَمِنَ الْمَاءِ الْبَارِدِ."



٤٧١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "الْمَرْءُ مَعَ مَنْ أَحَبَّ."



٤٧٢- عَنْ أَبِي ذَرٍّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَفْضَلُ الْأَعْمَالِ الْحُبُّ فِي اللَّهِ وَالْبُغْضُ فِي اللَّهِ."



**469.** Ji 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji qelbê însanî rêyên dirêjî newalên hewesên nefsê dibin hene. Vêca ne xema Xwedê ye ka kesê ku qelbê xwe ji van rêyan tevan re vekirî di kîjanê de helak bike. Belê kesê ewlewiya xwe bi Xwedê anî be, wê Xwedê wî ji tevlîheviya hewesên wî rizgar bike."*

(İM4166 Ibn Maceh, Zuhd, 14)

# HEZKIRIN
## MIROV BI KESÊ JÊ HEZ DIKE RE YE

**470.** Ji Ebu'd-Derda' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dawud (Eleyhisselam) wiha dua dikir: 'Xwedayê min! Ez daxwaza hezkirina te, hezkirina kesê ku ji te hez dike û kar û kiryarê ku min bigihêjîne hezkirina te ji te dikim. Xwedayê min! Tu hezkirina xwe li min wisa zêde bike ku ez ji nefsa xwe, ji zar û zêçê xwe û ji ava cemidî zehftir hez ji Te bikim."*

(T3490 Tirmizî, De'ewat, 72)



**471.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirov bi hezjêkerê xwe re ye."*

(B6168 Buxarî, Edeb, 96)



**472.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirînê emela hezkrina ji bo Xwedê û nefretkirina ji bo Xwedê ye."*

(D4599 Ebû Dawûd, Sunnet, 2)



٤٧٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يَقُولُ: أَيْنَ الْمُتَحَابُّونَ بِجَلَالِي؟ الْيَوْمَ أُظِلُّهُمْ فِي ظِلِّي يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلَّا ظِلِّي."



٤٧٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ، أَنَّ رَجُلاً كَانَ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ ، فَمَرَّ بِهِ رَجُلٌ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنِّى لَأُحِبُّ هَذَا، فَقَالَ لَهُ النَّبِيُّ ﷺ : "أَعْلَمْتَهُ؟" قَالَ: لاَ. قَالَ: "أَعْلِمْهُ." قَالَ: فَلَحِقَهُ فَقَالَ: إِنِّي أُحِبُّكَ فِى اللَّهِ، فَقَالَ: أَحَبَّكَ الَّذِى أَحْبَبْتَنِى لَهُ.

# MERHEMET
## HAVEYNÊ HEYÎNÊ YÊ ÎLAHÎ YE

٤٧٥- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِينَ فِى تَوَادِّهِمْ وَتَرَاحُمِهِمْ وَتَعَاطُفِهِمْ، مَثَلُ الْجَسَدِ، إِذَا اشْتَكَى مِنْهُ عُضْوٌ، تَدَاعَى لَهُ سَائِرُ الْجَسَدِ بِالسَّهَرِ وَالْحُمَّى."



٤٧٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو يَبْلُغُ بِهِ النَّبِيَّ ﷺ : "الرَّاحِمُونَ يَرْحَمُهُمُ الرَّحْمَانُ ارْحَمُوا أَهْلَ الْأَرْضِ يَرْحَمْكُمْ مَنْ فِى السَّمَاءِ."



**473.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle (Roja Qiyametê) dibêje: 'Kanî ew kesên ji bo riza min hez ji hev kirîn? Ezê di vê roja ku ji bilî siha (hîmaya) min tu sih (himaye) tuneyîn wan kime bin siha (hîmaya) xwe de."*

(HM8436 Ibn Hanbel, II, 338)



**474.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku zilamek li cem Resûlê Xwedê (s.) bû. Vêca zilamek ber wan re derbas bû. Ewê li cem Resûlê Xwedê (s.) bû got: "Ya Resûlê Xwedê! Ez hez ji vî dikim." Resûlê Xwedê (s.) jê re got: *"Ma te ev ji wî bi xwe re gotiye?"* Got: "Nexêr." Pêxember (s.) got: *"Jê re bêje."* Vêca çû xwe gihandiyê û jê re got: "Ez ji bo Xwedê hez ji te dikim." Ewî zilamî jî got: "Ew Xwedayê te ji bo Wî hez ji min kirî hez ji te bike."

(D5125 Ebû Dawûd, Edeb, 112-113)

# MERHEMET
## HAVEYNÊ HEYÎNÊ YÊ ÎLAHÎ YE

**475.** Ji Nu'man bin Beşîr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin, di hezjihevkirin û lihevmerhemetkirin û di hevdugirtinê de weke bedenekî ne; dema ezayek ji bedenê êşiya beden tev dikeve tayê û bêxewiyê."*

(M6586 Muslim, Birr we sile, 66; B6011 Buxarî, Edeb, 27)



**476.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê (ku navek Wî) er-Rehman e, rehmê li merhemetkeran dike. Vêca hûn rehmê li yên li ser erdê bikin, wê Yê li asîmana rehmê li we bike."*

(D4941 Ebû Dawûd, Edeb, 58; T1924 Tirmizî, Birr we sile, 16)



٤٧٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا الْقَاسِمِ ﷺ يَقُولُ: ”لاَ تُنْزَعُ الرَّحْمَةُ إِلاَّ مِنْ شَقِيٍّ.“



٤٧٨- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”لاَ يَرْحَمُ اللَّهُ مَنْ لاَ يَرْحَمُ النَّاسَ.“



٤٧٩- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ:”جَعَلَ اللَّهُ الرَّحْمَةَ مِائَةَ جُزْءٍ فَأَمْسَكَ عِنْدَهُ تِسْعَةً وَتِسْعِينَ جُزْءًا، وَأَنْزَلَ فِي الْأَرْضِ جُزْءًا وَاحِدًا، فَمِنْ ذَلِكَ الْجُزْءِ يَتَرَاحَمُ الْخَلْقُ، حَتَّى تَرْفَعَ الْفَرَسُ حَافِرَهَا عَنْ وَلَدِهَا خَشْيَةَ أَنْ تُصِيبَهُ.“

# MESÛLIYETEK ÎNSANÎ
## EM HEMÎ MESÛL IN

٤٨٠- عَنْ عَلِيٍّ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”رُفِعَ الْقَلَمُ عَنْ ثَلاَثَةٍ: عَنِ النَّائِمِ حَتَّى يَسْتَيْقِظَ، وَعَنِ الصَّبِيِّ حَتَّى يَحْتَلِمَ، وَعَنِ الْمَجْنُونِ حَتَّى يَعْقِلَ.“



**477.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Ebu'l-Qasim (s.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Merhemet tenê ji kesê bedbext tête sitandin.*"

(T1923 Tirmizî, Birr we sile, 16; D4942 Ebû Dawûd, Edeb, 58)



**478.** Ji Cerîr bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê rehmê li mirovan neke, Xwedê jî rehmê li wî nake."*

(B7376 Buxarî, Tewhîd, 2; M6030 Muslim, Feda'il, 66)



**479.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Xwedê merhemet kire sed parçe, nehwêt û neh parçe ji xwe re hiştin û parçeyek tenê nazilê erdê kir. Vêca mexlûq hemî ji wê parça rehmê li hev merhemet dikin. Bêweku, mehîn (dema coniya xwe şîr dide) bo lênekeve û zerer negihiyê lingê xwe dirake.'"*

(B6000 Buxarî, Edeb,19)

# MESÛLIYETEK ÎNSANÎ
## EM HEMÎ MESÛL IN

**480.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesûliyet ji sê kesan hatiye rakirin: "Kesê di xewêde be heta şiyar bibe, zarok heta balix bibe û kesê dîn bûbe heta hişê wî were serê wî."*

(D4403 Ebû Dawûd, Hudûd, 17; T1423 Tirmizî, Hudûd, 1)



٤٨١- حَدَّثَنَا زَكَرِيَّاءُ قَالَ سَمِعْتُ عَامِرًا يَقُولُ سَمِعْتُ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ ﵄ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ "مَثَلُ الْقَائِمِ عَلَى حُدُودِ اللَّهِ وَالْوَاقِعِ فِيهَا كَمَثَلِ قَوْمٍ اسْتَهَمُوا عَلَى سَفِينَةٍ، فَأَصَابَ بَعْضُهُمْ أَعْلاَهَا وَبَعْضُهُمْ أَسْفَلَهَا، فَكَانَ الَّذِينَ فِى أَسْفَلِهَا إِذَا اسْتَقَوْا مِنَ الْمَاءِ مَرُّوا عَلَى مَنْ فَوْقَهُمْ فَقَالُوا لَوْ أَنَّا خَرَقْنَا فِى نَصِيبِنَا خَرْقًا، وَلَمْ نُؤْذِ مَنْ فَوْقَنَا. فَإِنْ يَتْرُكُوهُمْ وَمَا أَرَادُوا هَلَكُوا جَمِيعًا، وَإِنْ أَخَذُوا عَلَى أَيْدِيهِمْ نَجَوْا وَنَجَوْا جَمِيعًا."



٤٨٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُضَيِّعَ مَنْ يَقُوتُ."



٤٨٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﵄: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُول: "كُلُّكُمْ رَاعٍ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، فَالْإِمَامُ رَاعٍ، وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالرَّجُلُ فِى أَهْلِهِ رَاعٍ وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالْمَرْأَةُ فِى بَيْتِ زَوْجِهَا رَاعِيَةٌ وَهْيَ مَسْئُولَةٌ عَنْ رَعِيَّتِهَا، وَالْخَادِمُ فِى مَالِ سَيِّدِهِ ﴿رَاعٍ﴾، وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ."



٤٨٤- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِينَ فِى تَوَادِّهِمْ وَتَرَاحُمِهِمْ وَتَعَاطُفِهِمْ مَثَلُ الْجَسَدِ إِذَا اشْتَكَى مِنْهُ عُضْوٌ تَدَاعَى لَهُ سَائِرُ الْجَسَدِ بِالسَّهَرِ وَالْحُمَّى."

**481.** Zekeriya (r.) ji 'Amir (r.) bihîstiye dibêje: "Min ji Nu'man bin Beşîr (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: '*Mesela wan kesên ku hukmê Xwedê pêktînin û yên ku pêknaynin, weke mesela wan kesên ku di gemîyeki de pişk kirine, hinek ketine qeta serî û hinek ketine qeta binî. Vêca ewên di qeta binî de ne, dema xwestin avê bisitînin, lazim e li ser wan kesên li qeta serî de ne re derbas bibin. Ji xwe re gotin: Ma em, kesên ser me re ne aciz nekin û ji binê gemiyê qulekî vekin (çênabe?) Vêca eger (yên li jor) bihêlin ku ewên li jêr wekî xwe bikin, wê tev de helak bibin. Lêbelê heke men'a wan kirin û nehiştin wisa bikin, wê ew û yên dîtir tev de xilas bibin.*'"

(B2493 Buxarî, Şîrket, 6)



**482.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Ji gunehan besî mirovî ye ku îhmala wan kesên debara wan hilgirtî ser xwe bike.*"

(D1692 Ebû Dawûd, Zekat, 45)



**483.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "*Hûn hemî mesûl in û hûn hemî ji yên bin hîmaya we de ne berpirsiyar in. Serokê dewletê mesûl e, ew ji (hemwelatî) yên rêvebertiya wan dike mesûl e. Mêr mesûl e, ew mesûlê kesên rêvebertiya wan dike ye. Jin mesûla mala hevserê xwe ye û ew mesûlê wayên rêvebertiya wan dike ye. Xulam jî mesûlê malê axayê xwe ye û ew jî mesûlê yê rêvebertiya wan dike ye.*"

(B2409 Buxarî, Îstîkrad, 20)



**484.** Ji Nu'man bin Beşîr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mumin, di hezjihevkirin û lihevmerhemet kirin û di hevdugirtinê de weke bedenekî ne; dema ezayek ji bedenê êşiha beden tev dikeve tayê û bêxewiyê.*"

(M6586 Muslim, Birr we sile, 66)

# TEQWA
## ŞUÛRA BI MESÛLIYETÊ LI HEMBER XWEDÊ

٤٨٥- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اتَّقِ اللَّهَ حَيْثُمَا كُنْتَ، وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا، وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ."



٤٨٦- عَنْ سَمُرَةَ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْحَسَبُ: الْمَالُ وَالْكَرَمُ: التَّقْوَى."



٤٨٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ إِنِّى أَسْأَلُكَ الْهُدَى وَالتُّقَى، وَالْعَفَافَ وَالْغِنَى."



٤٨٨- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ: لاَ أَقُولُ لَكُمْ إِلاَّ كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ، قَالَ: كَانَ يَقُولُ: "...اللَّهُمَّ! آتِ نَفْسِى تَقْوَاهَا، وَزَكِّهَا أَنْتَ خَيْرُ مَنْ زَكَّاهَا، أَنْتَ وَلِيُّهَا وَمَوْلاَهَا..."



٤٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ أَكْثَرِ مَا يُدْخِلُ النَّاسَ الْجَنَّةَ، فَقَالَ: "تَقْوَى اللَّهِ وَحُسْنُ الْخُلُقِ."

# TEQWA
## ŞUÛRA BI MESÛLIYETÊ LI HEMBER XWEDÊ

**485.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Tu li kûderê bî teqwatiya Xwedê bike (di pêşberê Xwedê de mesûliyeta xwe zanibe) Piştî xirabiyê qenciyeke bike ku wê xirabiyê rake. Bi mirovan re bi exlaqê xweş miamele bike."*

(T1987 Tirmizî, Birr we sile, 55)



**486.** Ji Semure (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heseb (sifetên ku kesekî di nezera mirovan de bilind dike) dewlemendiya mal e. Kerem (sifetên ku kesekî li cem Xwedê bilind dike) teqwa ye."*

(T3271 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'ân, 49)



**487.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Ez ji te hîdayetê, teqwayê, iffetê û dewlemendiya dil dixwazim."*

(M6904 Muslim, Zikir, dua, tewbe we îstîxfar, 72)



**488.** Zeyd bin Erqem (r.) wiha gotiye: "Ez tenê we hînê tişta ku Resûlê Xwedê (s.) em hînê dikirin hîn dikim. Resûlê Xwedê (s.) digot: *'Ey Xwedayê min! Teqwayê (têgihaştina mesuliyetê) bixe nesibê nefsa min tu wê paqij bike, tu çêtirînê kesê wê paqij bikî yî, dost û xwedanê wê tuwî, ..."*

(M6906 Muslim, Zikir, dua, tewbe we îstîxfar, 73)



**489.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) tişta zehftir dibe wesîla ketina mirovan di cennetê de hate pirsîn. Ewî got: *"Teqwatiya Xwedê (parastina ji ezabê Wî) û exlaqê xweş."*

(T2004 Tirmizî, Birr we sile, 62)

# XUŞÛ
## HISKIRINA EZEMETA XWEDÊ

٤٩٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٤٩١- عَنْ هِشَامِ بْنِ إِسْحَاقَ وَهُوَ ابْنُ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ كِنَانَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ أَرْسَلَنِى الْوَلِيدُ بْنُ عُقْبَةَ وَهُوَ أَمِيرُ الْمَدِينَةِ إِلَى ابْنِ عَبَّاسٍ أَسْأَلُهُ، عَنِ اسْتِسْقَاءِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَأَتَيْتُهُ فَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَرَجَ مُتَبَذِّلاً مُتَوَاضِعًا مُتَضَرِّعًا حَتَّى أَتَى الْمُصَلَّى فَلَمْ يَخْطُبْ خُطْبَتَكُمْ هَذِهِ، وَلَكِنْ لَمْ يَزَلْ فِى الدُّعَاءِ وَالتَّضَرُّعِ وَالتَّكْبِيرِ، وَصَلَّى رَكْعَتَيْنِ كَمَا كَانَ يُصَلِّى فِى الْعِيدِ.



٤٩٢- عَنْ عَلِيٍّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ... فَإِذَا رَكَعَ قَالَ: "اللَّهُمَّ لَكَ رَكَعْتُ وَبِكَ آمَنْتُ وَلَكَ أَسْلَمْتُ خَشَعَ لَكَ سَمْعِى وَبَصَرِى وَمُخِّى وَعِظَامِى وَعَصَبِى."



٤٩٣- عَنِ الْفَضْلِ بْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الصَّلاَةُ مَثْنَى مَثْنَى، تَشَهَّدُ فِى كُلِّ رَكْعَتَيْنِ، وَتَخَشُّعٌ وَتَضَرُّعٌ وَتَمَسْكُنٌ..."



# XUŞÛ
## HISKIRINA EZEMETA XWEDÊ

**490.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike."*

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**491.** Hîşam bin Îshaqê kurê Ebdullah bin Kînane ji bavê xwe rîwayet kiriye digot: "Mîrê Medînê el-Welîd bin 'Uqbe, ez şiyandim cem Ibn Ebbas de qene pirsa nimêja baranê jê bikim ka gelo Resûlê Xwedê çewa dikir. Ez çûme cemê, ji min re got: 'Resûlê Xwedê (s.) di cil û bergên kevin de, bi tewazu û bi karîn û zarîn derket heta gihate meydana tê de nimêj dihate kirin. Weke vê xutba hûn dixwênin tu xutbe nexwend. Belê bê navber dua dikir karîn û zarîna xwe digihande Xwedê û tekbîr dida. Weke roja eydê du riket nimêj kir."

(T558 Tirmizî, Cum'a, 43; N1507 Nesaî, Îstîsqa, 3)



**492.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) di nimêjê de diçû rukûê digot: *'Xwedayê min! Min tenê xwe ji te re tewand, min tenê bawerî bi te anî, ez tenê teslîmê te bûme. Guhê min, çavê min, mejiyê min hestîyê min û rehikê min tev pêşberê te di halê xuşû û tirsê de ne.'*"

(T3421 Tirmizî, De'ewat, 32; D760 Ebû Dawûd, Salat, 118-119)



**493.** Ji Fedl bin Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nimêj (ya nafîle) du riket du riket têne kirin. Di her du riketan de tuyê teşehhudê (tehiyyatê) xwêne, tuyê bi xuşû hereket ke, karîn û zarînê kê û situyê xwe tewêne."*

(T385 Tirmizî, Salat, 166; HM1799 Ibn Hanbel, I, 211)



٤٩٤- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ: لاَ أَقُولُ لَكُمْ إِلاَّ كَمَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ، كَانَ يَقُولُ: "...اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ عِلْمٍ لاَ يَنْفَعُ، وَمِنْ قَلْبٍ لاَ يَخْشَعُ، وَمِنْ نَفْسٍ لاَ تَشْبَعُ، وَمِنْ دَعْوَةٍ لاَ يُسْتَجَابُ لَهَا."

# IXLAS
## PÊŞBERÊ XWEDÊ DE SEMÎMIYET

٤٩٥- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ..."إِنَّ اللَّهَ لاَ يَقْبَلُ مِنَ الْعَمَلِ إِلاَّ مَا كَانَ لَهُ خَالِصًا وَابْتُغِيَ بِهِ وَجْهُهُ."



٤٩٦- عَنْ تَمِيمٍ الدَّارِيِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الدِّينُ النَّصِيحَةُ" قُلْنَا: لِمَنْ؟ قَالَ: "لِلَّهِ وَلِكِتَابِهِ وَلِرَسُولِهِ وَلأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ وَعَامَّتِهِم."



٤٩٧- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ قَالَ: سَمِعْتُ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: ...فِى دُبُرِ صَلاَتِهِ: "...اللَّهُمَّ! رَبَّنَا وَرَبَّ كُلِّ شَيْءٍ، اجْعَلْنِى مُخْلِصًا لَكَ وَأَهْلِى فِى كُلِّ سَاعَةٍ فِى الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ، يَا ذَا الْجَلاَلِ وَالإِكْرَامِ..."



٤٩٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



**494.** Zeyd bin Erqem (r.) wiha gotiye: "Ez tenê we hînê tişta ku Resûlê Xwedê (s.) em hînê dikirin dikim. Resûlê Xweda digot: '...*Xwedayê min! Ez ji ilmê feydê nade, ji dilê natirsê, ji nefsa têrnabe û ji duaya nayê qebulkirin xwe dispêrime te.*'"

(M6906 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 73; N5540 Nesaî, Îstî'aze, 65)

# IXLAS
## PÊŞBERÊ XWEDÊ DE SEMÎMIYET

**495.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Xwedê tenê emelê bi semîmî û ji bo bi destkirina rizaya Xwedê hatîn kirin qebûl dike.*"

(N3142 Nesaî, Cîhad, 24)



**496.** Ji Temîm ed-Darî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Dîn semîmiyet e.*" Me got: "Pêşberî kî (semîmiyet e)?" Got: "*Pêşberê Xwedê, kitêba Wî, Resûlê Wî, rêvebirên Misilmanan û hemî misilmanan.*"

(M196 Muslim, Îman, 95)



**497.** Ji Zeyd bin Erqem (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye ku di paş nimêjê de digot: "*Xwedayê min! Ey Rebbê me û Rebbê her tiştî! Min û aîla min di her gavên di dinya û di axîretê de bigerîne ji muxlisan ey xwedanê ezemet û îkramê!...*"

(D1508 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabî'l-wîtr, 25)



**498.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike.*"

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



٤٩٩- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ فَارَقَ الدُّنْيَا عَلَى الْإِخْلاَصِ لِلَّهِ وَحْدَهُ، وَعِبَادَتِهِ لاَ شَرِيكَ لَهُ، وَإِقَامِ الصَّلاَةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، مَاتَ وَاللَّهُ عَنْهُ رَاضٍ."

# IHSAN
## XWEŞÎTÎ Û QENCIYA MISILMANÎ

٥٠٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ... قَالَ: "الْإِحْسَانُ أَنْ تَعْبُدَ اللَّهَ كَأَنَّكَ تَرَاهُ فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تَرَاهُ فَإِنَّهُ يَرَاكَ..."



٥٠١- عَنْ حُذَيْفَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَكُونُوا إِمَّعَةً تَقُولُونَ: إِنْ أَحْسَنَ النَّاسُ أَحْسَنَّا، وَإِنْ ظَلَمُوا ظَلَمْنَا، وَلَكِنْ وَطِّنُوا أَنْفُسَكُمْ، إِنْ أَحْسَنَ النَّاسُ أَنْ تُحْسِنُوا، وَإِنْ أَسَاءُوا فَلاَ تَظْلِمُوا."



٥٠٢- عَنْ سَهْلِ بْنِ مُعَاذِ بْنِ أَنَسٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "أَفْضَلُ الْفَضَائِلِ أَنْ تَصِلَ مَنْ قَطَعَكَ، وَتُعْطِيَ مَنْ مَنَعَكَ، وَتَصْفَحَ عَمَّنْ شَتَمَكَ."



٥٠٣- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَال: "إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الْإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ..."

**499.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bêyî ku şirîka ji Xwedê re çêke û bi îxlas tenê ji Wî re îbadet bike, nimêja xwe rasterast bike û zikata malê xwe bide û li ser vî halî ji dinyayê veqetihê bêguman ew kes di halê ku Xwedê ji wî razî de miri ye."*

(ÎM70 Ibn Maceh, Sunnet, 9)

# IHSAN
## XWEŞÎTÎ Û QENCIYA MISILMANÎ

**500.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Îhsan, ew e ku tu îbadetê Xwedê bikî weke ku tu Wî dibîne. Heke tu Wî nebine jî ew te dibîne."*

(B4777 Buxarî, Tefsîr, Luqman, 2)



**501.** Ji Huzeyfe bin el-Yeman (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nebin kêmşeref; ku hûn bêjin: 'Heke mirov qenciyê bikin emê jî qenciyê kin, heke zilm kirin emê jî zilmê kin.' Belê nefsa xwe hîn bikin (ji xwe re bikin edet) ku heke însana qencî kirin hûn jî qenciyê bikin û heke xirabî kirin hûn zilmê nekin."*

(T2007 Tirmizî, Birr we sile, 63)



**502.** Sehl bin Muaz bin Enes (r.) bi rêya bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenctir emelên qenc, ewe tu eleqa xwe ji eqrebayê xwe yê têkiliyên xwe ji te biriîn re dewam bike ye, tu bidî kesê nedayî te û kesê dujûn ji te re kirî efû bike ye."*

(HM15703 Ibn Hanbel, III, 439)



**503.** Ji Şeddad bin Ews (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Xwedê di her kar û barî de îhsan (sipehî çêkirin) ferz kiriye..."*

(T1409 Tirmizî, Diyat, 14; M5055 Muslim, Sayd we Zeba'ih, 57)

# XWEDAYETÎ
## DI HER REWŞÊ DE MIQATEKIRINA RIZAYA XWEDÊ

٥٠٤- ...فكَتَبَتْ عَائِشَةُ ﴿رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهَا﴾ إِلَى مُعَاوِيَةَ: سَلاَمٌ عَلَيْكَ أَمَّا بَعْدُ فَإِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنِ الْتَمَسَ رِضَاءَ اللَّهِ بِسَخَطِ النَّاسِ كَفَاهُ اللَّهُ مُؤْنَةَ النَّاسِ، وَمَنِ الْتَمَسَ رِضَاءَ النَّاسِ بِسَخطِ اللَّهِ وَكَلَهُ اللَّهُ إِلَى النَّاسِ."



٥٠٥- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ قَالَ: ...فقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...إِنَّ اللَّهَ لاَ يَقْبَلُ مِنَ الْعَمَلِ إِلاَّ مَا كَانَ لَهُ خَالِصًا وَابْتُغِيَ بِهِ وَجْهُهُ."



٥٠٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَقُولُ اللَّهُ تَعَالَى: الصَّوْمُ لِى، وَأَنَا أَجْزِى بِهِ، يَدَعُ شَهْوَتَهُ وَأَكْلَهُ وَشُرْبَهُ مِنْ أَجْلِى..."



# XWEDAYETÎ
## DI HER REWŞÊ DE MIQATEKIRINA RIZAYA XWEDÊ

**504.** (Li ser daxwaza Muawiye ji Hz. Aîşe ku hinek şîretan lê bike) Aîşe (r.) nameyek ji Muawiye re nivîsand û got: "Silama Xwedê li ser te be. Piştre, min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê pêşber enra mirovan de daxwaza bidestkirina rizaya Xwedê bike, wê Xwedê wî ji eziyeta wan xilas bike. Kesê pêşber enra Xwedê daxwaza bi destkirina rizaya mirovan bike, wê Xwedê ewî hewaleyê wan mirovan bike."*

(T2414 Tirmizî, Zuhd, 64)



**505.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê tenê emelê bi semîmî û ji bo bi destkirina rizaya Xwedê hatîn kirin qebûl dike."*

(N3142 Nesaî, Cîhad, 24)



**506.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Teala dibêje: 'Rojî ji bo min e. Mukafata wê ezê bidim. (Lewra rojîgir) terka hewesa nefsa xwe û terka xwarin û vexwarinê ji bo min dike…'"*

(B7492 Buxarî, Tewhîd, 35)



٥٠٧- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: مَنْ أَحَبَّ لِلَّهِ، وَأَبْغَضَ لِلَّهِ، وَأَعْطَى لِلَّهِ، وَمَنَعَ لِلَّهِ، فَقَدِ اسْتَكْمَلَ الْإِيمَانَ."



٥٠٨- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَصَابَتْ أَحَدَكُمْ مُصِيبَةٌ فَلْيَقُلْ: إِنَّا لِلَّهِ وَإِنَّا إِلَيْهِ رَاجِعُونَ، اللَّهُمَّ! عِنْدَكَ أَحْتَسِبُ مُصِيبَتِى فَآجِرْنِى فِيهَا وَأَبْدِلْ لِى خَيْرًا مِنْهَا."

# XÊR

## HER KAR Û BARÊ MUMINÎ JÊ RE XÊR E; XÊR JI XWEDÊ YE

٥٠٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَقَفَ عَلَى أُنَاسٍ جُلُوسٍ فَقَالَ: "أَلاَ أُخْبِرُكُمْ بِخَيْرِكُمْ مِنْ شَرِّكُمْ؟" قَالَ: فَسَكَتُوا، فَقَالَ ذَلِكَ ثَلاَثَ مَرَّاتٍ، فَقَالَ رَجُلٌ: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَخْبِرْنَا بِخَيْرِنَا مِنْ شَرِّنَا، قَالَ: "خَيْرُكُمْ مَنْ يُرْجَى خَيْرُهُ وَيُؤْمَنُ شَرُّهُ وَشَرُّكُمْ مَنْ لاَ يُرْجَى خَيْرُهُ وَلاَ يُؤْمَنُ شَرُّهُ."



٥١٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنَ النَّاسِ مَفَاتِيحَ لِلْخَيْرِ، مَغَالِيقَ لِلشَّرِّ، وَإِنَّ مِنَ النَّاسِ مَفَاتِيحَ لِلشَّرِّ، مَغَالِيقَ لِلْخَيْرِ، فَطُوبَى لِمَنْ جَعَلَ اللَّهُ مَفَاتِيحَ الْخَيْرِ عَلَى يَدَيْهِ، وَوَيْلٌ لِمَنْ جَعَلَ اللَّهُ مَفَاتِيحَ الشَّرِّ عَلَى يَدَيْهِ."



**507.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji bo Xwedê hez bike, ji bo Xwedê nefret bike, ji bo Xwedê bide, ji bo Xwedê nede, ewî îmana xwe kamil kiri ye."*

(D4681 Ebû Dawûd, Sunne, 15)



**508.** Ji Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema musîbetek hate serê yekî ji we, bila bêje: 'Em yê Xwedê ne û emê bizivirine Wî, Xwedayê min! Ez hêviya xêra vê musîbetê ji te dikim, bo vê yekê xêrê bike nesîbê min û di cihê wê de tiştek xêrtir bide min.'"*

(D3119 Ebû Dawûd, Cena'iz, 17-18; M2127 Muslim, Cena'iz, 4)

# XÊR

## HER KAR Û BARÊ MUMINÎ JÊ RE XÊR E; XÊR JI XWEDÊ YE

**509.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) raserî serê mirovnê rûniştî sekinî û got: *"Ma we divê ez qenc û xirabê we kîne ji we re bêjim?"* Ew mirov bêdeng man. Vêca Resûlê Xwedê sê cara ev pirs dubare kir. Zilamekî got: *"Belê ya Resûlê Xwedê! Qenc û xirabê me kîne ji me re bêje."* *Resûlê Xwedê got: "Qencê we ew kesê hêviya xêrê jê tê kirin û mirov ji xirabiya wî bi ewle ne; xirabê we jî ewê hêviya xêrê jê nayê kirin û mirov ji xirabiya wî ne ewle ne."*

(T2263 Tirmizî, Fîten, 76; HM8798 Ibn Hanbel, II, 368)



**510.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman hinek mirov hene miftê xêrê ne û radokê/zendê xirabiyê ne. Bêguman hinek mirov jî hene miftê xirabiyê ne û radokê/zendê xêrê ne. Vêca xwezî bi wî kesî ku Xwedê miftê xêrê kirîn destê wî de! Û xwelî li serê wî kesî be ku Xwedê miftê xirabiyê kirîn destê wî de!"*

(ÎM237 Ibn Maceh, Sunnet, 19)



٥١١- عَنْ عَلِيٍّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ، أَنَّهُ كَانَ إِذَا قَامَ إِلَى الصَّلاَةِ قَالَ: "وَجَّهْتُ وَجْهِيَ لِلَّذِى فَطَرَ السَّمَوَاتِ وَالأَرْضَ حَنِيفًا وَمَا أَنَا مِنَ الْمُشْرِكِينَ، إِنَّ صَلاَتِى وَنُسُكِى وَمَحْيَاىَ وَمَمَاتِى لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ... وَالْخَيْرُ كُلُّهُ فِى يَدَيْكَ وَالشَّرُّ لَيْسَ إِلَيْكَ..."



٥١٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "عَجَبًا لِلْمُؤْمِنِ لاَ يَقْضِي اللَّهُ لَهُ شَيْئًا إِلَّا كَانَ خَيْرًا لَهُ."



٥١٣- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ﵄ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعَلِّمُنَا الْإِسْتِخَارَةَ فِى الأُمُورِ كَمَا يُعَلِّمُنَا السُّورَةَ مِنَ الْقُرْآنِ...

# SEADET Û ŞEQAWET
## DILŞADÎ Û XEMGÎNÎ

٥١٤- عَنْ عَلِيٍّ ﵁ قَالَ: كُنَّا فِى جَنَازَةٍ فِى بَقِيعِ الْغَرْقَدِ، فَأَتَانَا النَّبِيُّ ﷺ فَقَعَدَ وَقَعَدْنَا حَوْلَهُ، وَمَعَهُ مِخْصَرَةٌ فَنَكَّسَ، فَجَعَلَ يَنْكُتُ بِمِخْصَرَتِهِ ثُمَّ قَالَ: "مَا مِنْكُمْ مِنْ أَحَدٍ، مَا مِنْ نَفْسٍ مَنْفُوسَةٍ إِلاَّ كُتِبَ مَكَانُهَا مِنَ الْجَنَّةِ وَالنَّارِ، وَإِلاَّ قَدْ كُتِبَ شَقِيَّةً أَوْ سَعِيدَةً."



**511.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) dirabû nimêjê digot: *"Min bi rûyê xwe berê xwe da wî Xwedayê ku erd û asîman ji tunehî anîne heyînê û ez henîf im (berê min her li heqiyê ye) û ne ji mişrika me. Bêguman nimêja min, qurbana min, jiyan û mirina min (hemî) ji rebbê alemê Ellah re ne... Xêr hemî di destê te de ne. Xirabî ne ji te ne..."*

(M1812 Muslim, Salatu'l-musâfirîn we qesruha, 201)



**512.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rewşa muminî çi xweş e! Xwedê jê re çi teqdîr kiribe mitleqa ew jê re xêre."*

(HM20549 Ibn Hanbel, V, 25)



**513.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Çewa Resûlê Xwedê (s.) em hînê sûretên Qur'anê dikir wisa di tev îş û karan de em hînê îstîxare kirinê jî dikirin..."

(B1162 Buxarî, Teheccud, 25)

# SEADET Û ŞEQAWET
## DILŞADÎ Û XEMGÎNÎ

**514.** Hz. Elî (r.) dibêje: "Carekî em li Meqbera Beqîu'l-Xerqedê di merasima defnkirina cenazeyekî de bûn. Resûlê Xwedê hate cem me û rûnişt em jî li derdora wî rûniştin. Di destê wî de şivikek hebû. Serê xwe tewand kûr mitale kir û bi şivkê xwe xîzik li ser erdê çêdikirin. Piştre got: *"Tu kes ji we û tu kes ji zindeyan nîne ku cihê wî yê di cennetê de an di cehnemê de û seîd e (xweşhal) an şeqi ye (bêbext) nenivisîbe."*

(B1362 Buxarî, Cena'iz, 82; M6731 Muslim, Qeder, 6)



٥١٥- عَنْ سَعْدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِنْ سَعَادَةِ ابْنِ آدَمَ رِضَاهُ بِمَا قَضَى اللَّهُ لَهُ وَمِنْ شَقَاوَةِ ابْنِ آدَمَ تَرْكُهُ اسْتِخَارَةَ اللَّهِ وَمِنْ شَقَاوَةِ ابْنِ آدَمَ سَخَطُهُ بِمَا قَضَى اللَّهُ لَهُ."



٥١٦- حَدَّثَنَا إِسْمَاعِيلُ بْنُ مُحَمَّدِ بْنِ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِنْ سَعَادَةِ ابْنِ آدَمَ ثَلَاثَةٌ وَمِنْ شِقْوَةِ ابْنِ آدَمَ ثَلَاثَةٌ: مِنْ سَعَادَةِ ابْنِ آدَمَ الْمَرْأَةُ الصَّالِحَةُ وَالْمَسْكَنُ الصَّالِحُ وَالْمَرْكَبُ الصَّالِحُ وَمِنْ شِقْوَةِ ابْنِ آدَمَ الْمَرْأَةُ السُّوءُ وَالْمَسْكَنُ السُّوءُ وَالْمَرْكَبُ السُّوءُ."



٥١٧- عَنِ الْحَارِثِ بْنِ أَبِي يَزِيدَ قَالَ: سَمِعْتُ جَابِرَ بْنَ عَبْدِ اللَّهِ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"لَا تَمَنَّوْا الْمَوْتَ فَإِنَّ هَوْلَ الْمَطْلَعِ شَدِيدٌ وَإِنَّ مِنَ السَّعَادَةِ أَنْ يَطُولَ عُمْرُ الْعَبْدِ وَيَرْزُقَهُ اللَّهُ الْإِنَابَةَ."



٥١٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَطَبَ النَّاسَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَذْهَبَ عَنْكُمْ عُبِّيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَتَعَاظُمَهَا بِآبَائِهَا فَالنَّاسُ رَجُلَانِ رَجُلٌ بَرٌّ تَقِيٌّ كَرِيمٌ عَلَى اللَّهِ وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ هَيِّنٌ عَلَى اللَّهِ وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَخَلَقَ اللَّهُ آدَمَ مِنْ تُرَابٍ..."



٥١٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَدْخُلُ النَّارَ إِلاَّ شَقِيٌّ." قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَنِ الشَّقِيُّ؟ قَالَ: "مَنْ لَمْ يَعْمَلْ لِلَّهِ بِطَاعَةٍ وَلَمْ يَتْرُكْ لَهُ مَعْصِيَةً."

**515.** Ji Se'd (bin Ebî Weqqas) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rizabûna însanî bi teqdîra Xwedê ewî xweşhal dike. Terka daxaziya xêrê ji Xwedê însanî bedbext dike. Nerizabûna bi teqdîra Xwedê jî mirovî bextreş dike."*

(T2151 Tirmizî, Qeder, 15)



**516.** Îsmaîl bin Muhemmed (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sê tişt ji xweşhaliya mêra ye û sê tişt jî ji bextreşiya mêra ye. Tiştên ji xweşhaliya mêra evin: Xanima baş, avayiya baş û suwariya baş. Tiştên ji bextreşiya mêra jî evin: Xanima xirab, avahiya xirab û suwariya xirab."*

(HM1445 Ibn Hanbel, I, 169)



**517.** Ji Haris bin Ebî Yezîd (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Cabir bin Ebdîllah (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Daxwaza mirinê nekin. Lewra rihdayîn zêde zehmet e. Bêguman Xwedê umrê mirovî dirêj bike û derfeta tobekirinê bidiyê ewî mirovî xweşhal dike.'"*

(HM14618 Ibn Hanbel, III, 333)



**518.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Mekkeyê xutbeyek xwend û got: *"Gelî mirova! Bê guman Xwedê xurûra Cahiliyetê û pesindana bi bav û kalan ji nav we rakir, vêca mirov du gurûb in: Qencê mutteqî yê li cem Xwedê biqedir û gunehkarê rûreş ê li cem Xwedê bêqîmet. Mirov zarokên Adem in û Xwedê Adem ji axê çêkiri ye..."*

(T3270 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 49; D5116 Ebû Dawûd, Edeb, 110, 111)



**519.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bilî kesê şeqî tu kes nakeve cehnemê de."* Hate gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma şeqî çi kese?" Got: *"Kesê bi itaetkirinê ji bo Xwedê emel neke û ji bo Xwedê terka gunehan neke (ew şeqi ye.)"*

(ÎM4298 Ibn Maceh, Zuhd, 35; HM8578 Ibn Hanbel, II, 349)

# EZM Û SEBAT
## SIFETÊN MUMINÎ YÊN TEYBET

٥٢٠- عَنْ عَائِشَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ سُئِلَ: أَيُّ الْعَمَلِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ؟ قَالَ: "أَدْوَمُهُ وَإِنْ قَلَّ."



٥٢١- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّهَا قَالَتْ كَانَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ حَصِيرٌ وَكَانَ يُحَجِّرُهُ مِنَ اللَّيْلِ فَيُصَلِّى فِيهِ فَجَعَلَ النَّاسُ يُصَلُّونَ بِصَلاَتِهِ وَيَبْسُطُهُ بِالنَّهَارِ فَثَابُوا ذَاتَ لَيْلَةٍ فَقَالَ "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! عَلَيْكُمْ مِنَ الأَعْمَالِ مَا تُطِيقُونَ، فَإِنَّ اللَّهَ لاَ يَمَلُّ حَتَّى تَمَلُّوا..."



٥٢٢- عَنْ سَعْدِ بْنِ إِبْرَاهِيمَ حَدَّثَنِى ابْنُ كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ عَنْ أَبِيهِ، كَعْبِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِ كَمَثَلِ الْخَامَةِ مِنَ الزَّرْعِ، تُفِيئُهَا الرِّيحُ، وَتَصْرَعُهَا مَرَّةً وَتَعْدِلُهَا أُخْرَى، حَتَّى تَهِيجَ..."



٥٢٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَثَلُ الْمُنَافِقِ كَمَثَلِ الشَّاةِ الْعَائِرَةِ بَيْنَ الْغَنَمَيْنِ، تَعِيرُ فِى هَذِهِ مَرَّةً وَفِى هَذِهِ مَرَّةً لاَ تَدْرِى أَيَّهَا تَتْبَعُ."



# EZM Û SEBAT
## SIFETÊN MUMINÎ YÊN TEYBET

**520.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Bêguman Xwedê hez ji emelê daîmî dike çendîn ku hindik jî be.*"

(M1828 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 216)



**521.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Hesîreka Resûlê Xwedê (s.) hebû. Vêca şevê (di mizgeftê de) pê ji xwe re cihek teybet çêdikir û tê de nimêj dikir. Mirovan jî dest pêkirin weke nimêja Pêxember nimêj kirin. Resûlê Xwedê (s.) bi roj ew hesîr divekir (û di mizgeftê de diraêxist). Şevekî mirov bi zehfî hatin û mizgeft tije kirin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji wan re wiha got: *"Gelî mirovan! Emelê taqeta we pê were bikin. Bêguman Xwedê aciz nabe belê hûn aciz dibin...*"

(M1827 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 215)



**522.** Se'd bin Îbrahîm (r.) bi rêya kurê Ke'b bin Malik ji bavê wî Ke'b ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mumin weke giyayê ter e. Ba wî ditewîne û radike, carna dide erdê û carna radike şipiya heta rast dibe...*"

(M7094 Muslim, Sıfatu'l-munafiqîn we ehkamuhum, 59)



**523.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Minafiq weke wê peza şaşbuyî ya di neqeba du keriya de diçe û tê. Carna diçe vî keriyî û carna diçe keriyê dîtir. Nizane ka li pey kîjanî here.*"

(N5040 Nesaî, Îman we şera'îtuh, 31)



٥٢٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُكْثِرُ أَنْ يَقُولَ: "يَا مُقَلِّبَ الْقُلُوبِ ثَبِّتْ قَلْبِى عَلَى دِينِكَ."

# SEBR
## MUCADELA JÎN Û HEYÎNÊ

٥٢٥- عن أَبِى مَالِكٍ الأَشْعَرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...الصَّلاَةُ نُورٌ، وَالصَّدَقَةُ بُرْهَانٌ، وَالصَّبْرُ ضِيَاءٌ..."



٥٢٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: مَرَّ النَّبِيُّ ﷺ بِامْرَأَةٍ تَبْكِى عِنْدَ قَبْرٍ، فَقَالَ: "اتَّقِى اللَّهَ وَاصْبِرِى"، قَالَتْ: إِلَيْكَ عَنِّى، فَإِنَّكَ لَمْ تُصَبْ بِمُصِيبَتِى، وَلَمْ تَعْرِفْهُ. فَقِيلَ لَهَا: إِنَّهُ النَّبِيُّ ﷺ . فَأَتَتْ بَابَ النَّبِيِّ ﷺ فَلَمْ تَجِدْ عِنْدَهُ بَوَّابِينَ. فَقَالَتْ: لَمْ أَعْرِفْكَ. فَقَالَ: "إِنَّمَا الصَّبْرُ عِنْدَ الصَّدْمَةِ الأُولَى."



٥٢٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَيْسَ الشَّدِيدُ بِالصُّرَعَةِ، إِنَّمَا الشَّدِيدُ الَّذِى يَمْلِكُ نَفْسَهُ عِنْدَ الْغَضَبِ."



**524.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gelek zêde ev dua dixwend: *"Ey (Xwedayê) qelba dizivirîne! Qelbê min li ser dînê xwe bisekinîne."*

(T2140 Tirmizî, Qeder, 7)

# SEBR
## MUCADELA JÎN Û HEYÎNÊ

**525.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nimêj nûr e, sedeqe burhan e (elametê îmanê ye) û sebir ronahî ye..."*

(M534 Muslim, Teharet, 1)



**526.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê ber jinekeka ku li ser tirbekî digirî re derbas bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) jê re got: *'Ji Xwedê bitirse û sebrê bike.'* Wê jinikê bêyî ku Resûlê Xwedê (s.) nas bike got: 'Ji min dûr keve, musîbeta hatî serê min nehatiye serê te.' Jê re gotin: 'Ew Resûlê Xwedê (s.) bû.' Ew jinik hate ber deriyê Pêxember (s.). Li ber deriyê wî derîvan nedîtin. (Vêca çû cemê) Ji Resûlê Xwedê re got: 'Min tu nasnekirî' Resûlê Xwedê got: *'Esas sebir di ewilê musîbetê de ye.'*"

(B1283 Buxarî, Cena'iz, 31; M2140 Muslim, Cena'iz, 15)



**527.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirovê pehlewan ne ewê ku di gulaşê de serkefti ye. Mirovê pehlewan ewê dema aciz dibe karê nefsa xwe zetim bike ye."*

(M6643 Muslim, Birr we sile, 107)



٥٢٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"الْمُؤْمِنُ الَّذِى يُخَالِطُ النَّاسَ وَيَصْبِرُ عَلَى أَذَاهُمْ أَعْظَمُ أَجْرًا مِنَ الْمُؤْمِنِ الَّذِى لاَ يُخَالِطُ النَّاسَ وَلاَ يَصْبِرُ عَلَى أَذَاهُمْ."



٥٢٩- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ أَنَّ نَاسًا مِنَ الْأَنْصَارِ سَأَلُوا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَعْطَاهُمْ ثُمَّ سَأَلُوهُ فَأَعْطَاهُمْ حَتَّى إِذَا نَفِدَ مَا عِنْدَهُ قَالَ: "... مَنْ يَصْبِرْ يُصَبِّرْهُ اللَّهُ وَمَا أُعْطِيَ أَحَدٌ مِنْ عَطَاءٍ خَيْرٌ وَأَوْسَعُ مِنَ الصَّبْرِ."

# HEYA
## BINGEHÊ EXLAQÊ ÎSLAMÊ

٥٣٠- حَدَّثَنَا أَبُو مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ مِمَّا أَدْرَكَ النَّاسُ مِنْ كَلَامِ النُّبُوَّةِ الْأُولَى: إِذَا لَمْ تَسْتَحى فَاصْنَعْ مَا شِئْتَ."



٥٣١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْإِيمَانُ بِضْعٌ وَسَبْعُونَ شُعْبَةً، وَالْحَيَاءُ شُعْبَةٌ مِنَ الْإِيمَانِ."



٥٣٢- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِكُلِّ دِينٍ خُلُقًا. وَخُلُقُ الْإِسْلَامِ الْحَيَاءُ."



**528.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêra muminê tevlî mirova dibe û pêşberê eziyeta wan sebrê dike ji xêra muminê tevli mirova nabe û pêşberî eziyeta wan sebrê nake mestir e."*

(İM4032 Ibn Maceh, Fîten 23; HM5022 Ibn Hanbel, II, 44)



**529.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku hinek mirovên Ensarî ji Resûlê Xwedê (s.) (tiştin) xwestin. Ewî jî da wan. Piştre cardî xwestîn. Resûlê Xwedê (s.) da wa heta li cemê tuwî mal nema û got: "*... Kesê sebrê bike wê Xwedê qeweta xwelibergirtinê bidiyê. Ji sebrê xêrtir û firehtir tu qencî li tu kesî nehatiye kirin.*"

(M2424 Muslim, Zekat, 124)

# HEYA
## BINGEHÊ EXLAQÊ ÎSLAMÊ

**530.** Ji Ebû Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman, gotinek ji gotinên pêxembertiyê yên pêşîn ku mirov têgihiştîn ev e: "Heke tu fihêt neke tişta te bivê bike."*

(B6120 Buxarî, Edeb, 78)



**531.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Îman heftê qusûr derece ye... Heya jî şubeyek/dereceyek ji îmanê ye.*"

(M152 Muslim, Îman, 57)



**532.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Her dînek exlaqek (xweyê teybetî) heye. Exlaqê Îslamê heya ye.*"

(İM4181 Ibn Maceh, Zuhd, 17)



٥٣٣- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا كَانَ الْفُحْشُ فِى شَيْءٍ إِلاَّ شَانَهُ، وَمَا كَانَ الْحَيَاءُ فِى شَيْءٍ إِلاَّ زَانَهُ."



٥٣٤- عَنْ سَلْمَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ رَبَّكُمْ تَبَارَكَ وَتَعَالَى حَيِيٌّ كَرِيمٌ يَسْتَحْيِى مِنْ عَبْدِهِ إِذَا رَفَعَ يَدَيْهِ إِلَيْهِ، أَنْ يَرُدَّهُمَا صِفْرًا."

# IFFET
## XWE HURMET, XWE RÊZÎ

٥٣٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ثَلاَثَةٌ؛ حَقٌّ عَلَى اللَّهِ عَوْنُهُمْ: الْمُجَاهِدُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ، وَالْمُكَاتَبُ الَّذِى يُرِيدُ الأَدَاءَ، وَالنَّاكِحُ الَّذِى يُرِيدُ الْعَفَافَ."



٥٣٦- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ؛ أَنَّ نَاسًا مِنَ الْأَنْصَارِ سَأَلُوا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَعْطَاهُمْ، ثُمَّ سَأَلُوهُ فَأَعْطَاهُمْ، حَتَّى إِذَا نَفِدَ مَا عِنْدَهُ قَالَ: "مَا يَكُنْ عِنْدِى مِنْ خَيْرٍ فَلَنْ أَدَّخِرَهُ عَنْكُمْ، وَمَنْ يَسْتَعْفِفْ يُعِفَّهُ اللَّهُ، وَمَنْ يَسْتَغْنِ يُغْنِهِ اللَّهُ، وَمَنْ يَصْبِرْ يُصَبِّرْهُ اللَّهُ، وَمَا أُعْطِيَ أَحَدٌ مِنْ عَطَاءٍ خَيْرٌ وَأَوْسَعُ مِنَ الصَّبْرِ."



**533.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêedebî di çi de an di kî de hebe mitleqa sik û kirêt dike. Heya di çi de an di kî de hebe mitleqa xweşik û delal dike."*

(T1974 Tirmizî, Birr we sile, 47)



**534.** Ji Selman (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Rebbê we Tebareke we Teala bi heya ye û merd e. Dema ebdê wî (ji bo dua kirinê ) destê xwe baskîve rakir fedî dike ku ewan vale bizivirîne."*

(D1488 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabî'l-wîtr, 23)

# IFFET
## XWE HURMET, XWE RÊZÎ

**535.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sê sinif însan hene alîkariya Xwedê heq dikin: Kesê di rêya Xwedê de cîhadê dike, koleyê ji bo azadiya xwe bistîne dixwaze heqê azadiya xwe bide axayê xwe, kesê ji bo iffeta xwe muhafeze bike dixwaze bizewice."*

(T1655 Tirmizî, Feda'ilu'l-cîhad, 20)



**536.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku hinek mirovên Ensarî ji Resûlê Xwedê (s.) (tiştin) xwestin. Ewî jî da wan. Piştre cardî xwestîn. Resûlê Xwedê (s.) da wa heta li cemê tuwî mal nema û got: *"Çi malê li cem min heyî ez ji hewe naveşêrim. Kesê iffet û şerefê bixwaze, wê Xweda wî kesî bi iffet û bi şeref bike. Kesê xwe muhtacê tu kesî neke Xwedê wî dewlemend dike muhtacê tu kesî nabe. Kesê sebrê bike wê Xwedê qeweta xwelibergirtinê bidiyê. Ji sebrê xêrtir û firehtir tu qencî li tu kesî nehatiye kirin."*

(M2424 Muslim, Zekat, 124)



٥٣٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ وَعَائِشَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ طَلَبَ حَقًّا فَلْيَطْلُبْهُ فِى عَفَافٍ وَافٍ، أَوْ غَيْرِ وَافٍ."



٥٣٨- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ حُصَيْنٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ عَبْدَهُ الْمُؤْمِنَ، الْفَقِيرَ الْمُتَعَفِّفَ أَبَا الْعِيَالِ."



٥٣٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَسْأَلُكَ الْهُدَى وَالتُّقَى، وَالْعَفَافَ وَالْغِنَى."

# SEDAQET

## SEDAQET MIROVÎ DİBE QENCIYÊ, QENCÎ JÎ DİBE CENNETÊ

٥٤٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ الْمِقْدَادُ يَوْمَ بَدْرٍ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّا لاَ نَقُولُ لَكَ كَمَا قَالَتْ بَنُو إِسْرَائِيلَ لِمُوسَى: ﴿فَاذْهَبْ أَنْتَ وَرَبُّكَ فَقَاتِلاَ إِنَّا هَا هُنَا قَاعِدُونَ﴾ وَلَكِنِ امْضِ وَنَحْنُ مَعَكَ، فَكَأَنَّهُ سُرِّيَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ .



**537.** Ji Ibn Umer û ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê de'wa heqqekî bike, vêca çi bi temamî bistîne çi kêm bistîne bila bi iffet bixwaze."*

(İM2421 Ibn Maceh, Sadaqat, 15)



**538.** Ji 'Imran bin Husayn (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê hez ji ebdê xwe yê feqîrê xwedî eyal ê bi heysiyet dike."*

(İM4121 Ibn Maceh, Zuhd, 5)



**539.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Ez ji te hîdayetê, teqwayê, iffetê û dewlemendiya dil dixwazim."*

(M6904 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 72)

# SEDAQET

## SEDAQET MIROVÎ DİBE QENCIYÊ, QENCÎ JÎ DİBE CENNETÊ

**540.** Ji Ebdullah (r.) hatiye ragihandin ku Mîqdad (r.) Roja Herba Bedrê got: "Ya Resûlê Xwedê! Em weke Israîliyan ji Mûsa (a.s.) re gotîn: 'Here tu û Rebbê xwe herbê bikin. Emê li vir rûniştî bin.' nabêjin. Belê (em dibêjin) '(Baskî neyar ve) here em bi te re ne.' Vêca weke ku dilê Resûlê Xwedê rihet bibe (geş û şa bû)'"

(B4609 Buxarî, Tefsîr, Ma'îde, 4)



٥٤١- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْأَحْوَصِ قَالَ: حَدَّثَنِى أَبِى أَنَّهُ شَهِدَ حَجَّةَ الْوَدَاعِ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ... فَقَالَ: "...أَلاَ إِنَّ لَكُمْ عَلَى نِسَائِكُمْ حَقًّا، وَلِنِسَائِكُمْ عَلَيْكُمْ حَقًّا، فَأَمَّا حَقُّكُمْ عَلَى نِسَائِكُمْ أَلاَّ يُوطِئْنَ فُرُشَكُمْ مَنْ تَكْرَهُونَ، وَلاَ يَأْذَنَّ فِى بُيُوتِكُمْ لِمَنْ تَكْرَهُونَ، أَلاَ وَحَقُّهُنَّ عَلَيْكُمْ أَنْ تُحْسِنُوا إِلَيْهِنَّ فِى كِسْوَتِهِنَّ وَطَعَامِهِنَّ."



٥٤٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "كُلُّكُمْ رَاعٍ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، فَالْإِمَامُ رَاعٍ وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالرَّجُلُ فِى أَهْلِهِ رَاعٍ وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالْمَرْأَةُ فِى بَيْتِ زَوْجِهَا رَاعِيَةٌ وَهْيَ مَسْئُولَةٌ عَنْ رَعِيَّتِهَا، وَالْخَادِمُ فِى مَالِ سَيِّدِهِ رَاعٍ، وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ."



٥٤٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "عَلَيْكُمْ بِالصِّدْقِ، فَإِنَّ الصِّدْقَ يَهْدِى إِلَى الْبِرِّ، وَإِنَّ الْبِرَّ يَهْدِى إِلَى الْجَنَّةِ، وَمَا يَزَالُ الرَّجُلُ يَصْدُقُ وَيَتَحَرَّى الصِّدْقَ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ صِدِّيقًا، وَإِيَّاكُمْ وَالْكَذِبَ، فَإِنَّ الْكَذِبَ يَهْدِى إِلَى الْفُجُورِ، وَإِنَّ الْفُجُورَ يَهْدِى إِلَى النَّارِ، وَمَا يَزَالُ الرَّجُلُ يَكْذِبُ وَيَتَحَرَّى الْكَذِبَ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ كَذَّابًا."



٥٤٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ النَّاسُ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُؤْمِنُ مَنْ أَمِنَهُ النَّاسُ عَلَى دِمَائِهِمْ وَأَمْوَالِهِمْ."

**541.** Ji Suleyman bin 'Emr bin el-Ehwes (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Bavê min ji min re got: 'Ez bi Resûlê Xwedê re hazirê Heccetu'l-Wedaê bûm... Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: '*Bizanin, bêşik heqê we li ser jinên we heye û heqên wan jî li ser we heye. Heqê we li ser wan ew e ku kesekî bê riza we nexin hundirê mala we û bi wan re sohbet nekin. Zanibin, heqên wan li ser we ew e ku hûn îhtiyaciya xwarin û lixwekirinê ji wan re bi edalet pêk bînin.*'"

(T1163 Tirmizî, Rîda'a, 11)



**542.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "*Hûn hemî mesûl in û hûn hemî ji yên bin hîmaya we de ne berpirsiyar in. Serokê dewletê mesûl e, ew ji (hemwelatî) yên rêvebertiya wan dike mesûl e. Mêr mesûl e, ew mesûlê kesên rêvebertiya wan dike ye. Jin mesûla mala hevserê xwe ye û ew mesûlê wayên rêvebertiya wan dike ye. Xulam jî mesûlê malê axayê xwe ye û ew jî mesûlê yê rêvebertiya wan dike ye.*"

(B2409 Buxarî, Îstîqrad, 20)



**543.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Ji rastiyê neveqetihin. Bêguman rastî berê însanî dide başîyê û başî jî berê însan dide cennetê û mirov rast dibêje/rastîyê ji xwe re dike exlaq heta li cem Xwedê ji siddîqan/rastgoyan tê nivîsîn. Xwe ji derewan biparêzin. Bêguman derew berê însan dide xirabiyê û xirabî jî berê însan dide cehnemê û mirov derewa dike heta ku li cem Xwedê ji derewkeran tê nivîsîn.*"

(M6639 Muslim, Birr we sile, 105)



**544.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Misilman ew kesê ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin e. Mumin jî ew kese ku mirov ji cîhet xwîn û malê xwe ve lê ewle ne.*"

(N4998 Nesaî, Îman we şera'îtuh, 8)

# MERDÎ
## DANA JI DIL Û BÊMUQABIL

٥٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْبَخِيلِ وَالْمُتَصَدِّقِ مَثَلُ رَجُلَيْنِ عَلَيْهِمَا جُنَّتَانِ مِنْ حَدِيدٍ، إِذَا هَمَّ الْمُتَصَدِّقُ بِصَدَقَةٍ اتَّسَعَتْ عَلَيْهِ، حَتَّى تُعَفِّيَ أَثَرَهُ، وَإِذَا هَمَّ الْبَخِيلُ بِصَدَقَةٍ تَقَلَّصَتْ عَلَيْهِ، وَانْضَمَّتْ يَدَاهُ إِلَى تَرَاقِيهِ، وَانْقَبَضَتْ كُلُّ حَلْقَةٍ إِلَى صَاحِبَتِهَا."



٥٤٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ يَوْمٍ يُصْبِحُ الْعِبَادُ فِيهِ إِلاَّ مَلَكَانِ يَنْزِلاَنِ فَيَقُولُ أَحَدُهُمَا: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُنْفِقًا خَلَفًا، وَيَقُولُ الْآخَرُ: اللَّهُمَّ أَعْطِ مُمْسِكًا تَلَفًا."



٥٤٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...لاَ يَجْتَمِعُ الشُّحُّ وَالْإِيمَانُ فِي قَلْبِ عَبْدٍ أَبَدًا."



٥٤٨- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَاتَّقُوا الشُّحَّ، فَإِنَّ الشُّحَّ أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ، حَمَلَهُمْ عَلَى أَنْ سَفَكُوا دِمَاءَهُمْ وَاسْتَحَلُّوا مَحَارِمَهُمْ."



# MERDÎ
## DANA JI DIL Û BÊMUQABIL

**545.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Halê kesê kunûj û halê kesê di rêya Xwedê de înfaqê dike weke halê du kesên li ser wan du zirxê ji hesin heye ye. Dema kesê merd niyeta dana sedeqeyekî dike, ew zirxê li ser wisa fereh dibe ji tengiya wî tu eser namêne. Dema kesê kunûj niyeta dana sedeqeyeki dike ew zirx lê teng dibe, destê wî bi navmilê wî ve dizeliqin û her heleqeya di zirx de heyî heleqa rex xwe de diperçiqêne."*

(M2361 Muslim, Zekat, 77)



**546.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di her roja ku li ebdên Xwedê dibe sibeh de, du melaîket têne xarê. Yek ji wan dibêje: 'Xwedayê min! Tu xelefê li kesê dide re vegerîne.' Melaîketê dîtir jî dibêje: 'Xwedayê min! Tu malê kesê kunûjiyê dike telef bike.'"*

(B1442 Buxarî, Zekat, 27)



**547.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Kunûjî û îman tu cara di dilê ebdekî de kom nabin.*"

(N3112 Nesaî, Cîhad, 8)



**548.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Xwe ji kunûjiyê biparêzin. Lewra kunûjiyê berê wan qewmên pêşiya we (derbasbûyîn) da hev. Vêca xwîna hevudû rijandin û tiştên ji wan re heram bûn helal kirin û ew (tevde) helak kirin.*"

(M6576 Muslim, Birr we sile, 56)



٥٤٩- عن أَبِى بَكْرٍ الصِّدِّيقِ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ خَبٌّ وَلاَ بَخِيلٌ وَلاَ مَنَّانٌ."

## MÊHVANPERWERTÎ
### EXLAQÊ IKRAMKIRINÊ

٥٥٠- عَنْ أَبِى شُرَيْحٍ الْكَعْبِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، جَائِزَتُهُ يَوْمٌ وَلَيْلَةٌ، وَالضِّيَافَةُ ثَلاثَةُ أَيَّامٍ، فَمَا بَعْدَ ذَلِكَ فَهُوَ صَدَقَةٌ، وَلاَ يَحِلُّ لَهُ أَنْ يَثْوِيَ عِنْدَهُ حَتَّى يُحْرِجَهُ."



٥٥١- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرٍ: أَنَّ أَصْحَابَ الصُّفَّةِ كَانُوا أُنَاسًا فُقَرَاءَ، وَأَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ عِنْدَهُ طَعَامُ اثْنَيْنِ فَلْيَذْهَبْ بِثَالِثٍ، وَإِنْ أَرْبَعٌ فَخَامِسٌ أَوْ سَادِسٌ."



٥٥٢- عَنْ أَنَسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ جَاءَ إِلَى سَعْدِ بْنِ عُبَادَةَ فَجَاءَ بِخُبْزٍ وَزَيْتٍ فَأَكَلَ، ثُمَّ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "أَفْطَرَ عِنْدَكُمُ الصَّائِمُونَ، وَأَكَلَ طَعَامَكُمُ الْأَبْرَارُ، وَصَلَّتْ عَلَيْكُمُ الْمَلائِكَةُ."



٥٥٣- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "لا خَيْرَ فِيمَنْ لا يُضِيفُ."



**549.** Ji Ebû Bekir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê fesad, kesê kunûj û kesê minnetê li yê qencî lê kirî dike naçine cennetê."*

(T1963 Tirmizî, Birr we sile, 41)

# MÊHVANPERWERTÎ
## EXLAQÊ IKRAMKIRINÊ

**550.** Ji Ebû Şureyh el-Ke'bî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anî be, bila qedrê mêhvanê xwe bigire. Dema vê jî, roj û şevek e. Mêhvandarî sê roj in. Ya ji vê zêdetir sedeqe ye. Ne helal e ji mêhvanî re ku li cem mêhvanhewênê xwe bimêne heta ku wî aciz bike."*

(B6135 Buxarî, Edeb, 85)



**551.** Ji Ebdurrehman bin Ebî Bekir (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Eshabê Suffeyê (kesên di hicreyeka mizgefta Pêxember (s.) de diman) mirovnê feqîr bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Kesê li balê xwarina du heba hebe bila yê siseyan, kesê xwarina çar heban li balê hebe bila yê pêncan an yê şeşan mêhvan bike."*

(B602 Buxarî, Mewaqîtu's-salat, 41)



**552.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) çû mala Se'd bin 'Ubade (r.) Se'd, jê re nan û zeyta zeytûna anî. Resûlê Xwedê (s.) jî ew xar. Piştre got: *"Rojîgir li cem hewe bifitirin, salih û qencê Xwedê xwarina we bixun û melaîket ji were dua bikin."*

(D3854 Ebû Dawûd, Et'ime, 54)



**553.** Ji 'Uqbe bin 'Amir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêr di kesê mêhvana na hewênê de nîn e."*

(HM17555 Ibn Hanbel, IV, 157)



٥٥٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ سَلاَمٍ قَالَ: لَمَّا قَدِمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعْنِي الْمَدِينَةَ انْجَفَلَ النَّاسُ إِلَيْهِ... وَكَانَ أَوَّلَ شَيْءٍ تَكَلَّمَ بِهِ أَنْ قَالَ: "أَيُّهَا النَّاسُ! أَفْشُوا السَّلاَمَ وَأَطْعِمُوا الطَّعَامَ وَصَلُّوا وَالنَّاسُ نِيَامٌ تَدْخُلُوا الْجَنَّةَ بِسَلاَمٍ."

# ÎSAR
## XEMXWARÎ

٥٥٥- عَنِ ابْنِ الْمُنْكَدِرِ: سَمِعَ جَابِرَ بْنَ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: مَا سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ شَيْئًا قَطُّ فَقَالَ: لاَ.



٥٥٦- عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ قَال: جاءَتِ امْرَأَةٌ بِبُرْدَةٍ ... مَنْسُوجٌ فِي حَاشِيَتِهَا -قَالَتْ يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّي نَسَجْتُ هَذِهِ بِيَدِي أَكْسُوكَهَا، فَأَخَذَهَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مُحْتَاجًا إِلَيْهَا، فَخَرَجَ إِلَيْنَا وَإِنَّهَا لإِزَارُهُ فَجَسَّهَا رَجُلٌ مِنَ الْقَوْمِ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، اكْسُنِيهَا، قَالَ: "نَعَمْ"، فَجَلَسَ مَا شَاءَ اللَّهُ فِي الْمَجْلِسِ، ثُمَّ رَجَعَ، فَطَوَاهَا ثُمَّ أَرْسَلَ بِهَا إِلَيْهِ.



٥٥٧- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ."



**554.** Ji Ebdullah bin Selam (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) (hîcret kir) hate Medînê, mirov baskî wî ve beziyan... Gotina ku pêşî Resûlê Xwedê (ji wan re) gotî ev bû: *"Gelî mirovan! Silevê di nav xwe de belav bikin, xwarinê bidin û di dema ku mirov di xewê de ne (şevê) nimêj bikin; da ku hûn bi xweşî biçine cennetê."*

(T2485 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 42)

# ÎSAR
## XEMXWARÎ

**555.** Ibnu'l-Munkedir (r.) dibêje: "Min ji Cabir bin Ebdîllah (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) ji tuwî tişta jê hatîn xwestin re negotiye 'na'.'"

(M6018 Muslim, Feda'il, 56)



**556.** Sehl bin Se'd (r.) gotiye: "Jinekî qumaşeke ji new'ê ebayan dew neqişkirî anî... (ba Resûlê Xwedê) û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Min ev qumaş bi destê xwe çêkiriye û neqş kiriye, ez didime te ku tu wergirî.' Îhtiyaciya Resûlê Xwedê (s.) jî pê hebû. Vêca qebûl kir (û piştî demeke kin) hate cem me ku ew qumaş bi şiklê îzarekî (ji navkê û xarde ve li xwe pêçayî) lê bû. Zilamekî ji cemaetê ew qumaş venêrand û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Evî bide min ez li xwe bikim.' Resûlê Xwedê (s.) got: '*bila*'. Resûlê Xwedê (s.) heta Xwedê xwest midetek dirêj nav wê komê de rûniştî ma. Piştre rabû zivirî (mala xwe) û ew qumaş pêça û rêkir ji wî zilamî re."



(B5810 Buxarî, Libas, 18)

**557.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji we heta tişta ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re jî nexazê ewî bawerî/îman neaniye."*

(T2515 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 59)



٥٥٨- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَسْلَمَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ﵁ يَقُولُ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا أَنْ نَتَصَدَّقَ، فَوَافَقَ ذَلِكَ مَالاً عِنْدِى، فَقُلْتُ: الْيَوْمَ أَسْبِقُ أَبَا بَكْرٍ إِنْ سَبَقْتُهُ يَوْمًا فَجِئْتُ بِنِصْفِ مَالِى، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا أَبْقَيْتَ لِأَهْلِكَ؟" فَقُلْتُ: مِثْلَهُ. قَالَ: وَأَتَى أَبُو بَكْرٍ ﵁ بِكُلِّ مَا عِنْدَهُ، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا أَبْقَيْتَ لِأَهْلِكَ؟" قَالَ: أَبْقَيْتُ لَهُمُ اللَّهَ وَرَسُولَهُ. قُلْتُ: لاَ أُسَابِقُكَ إِلَى شَيْءٍ أَبَدًا.

# WEFAKARÎ
## QEDIRNASÎ

٥٥٩- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: أُهْدِيَ لِلنَّبِيِّ ﷺ عِنَبٌ مِنَ الطَّائِفِ. فَدَعَانِى فَقَالَ: "خُذْ هَذَا الْعُنْقُودَ فَأَبْلِغْهُ أُمَّكَ" فَأَكَلْتُهُ قَبْلَ أَنْ أُبْلِغَهُ إِيَّاهَا. فَلَمَّا كَانَ بَعْدَ لَيَالٍ قَالَ لِى: "مَا فَعَلَ الْعُنْقُودُ؟ هَلْ أَبْلَغْتَهُ أُمَّكَ؟" قُلْتُ: لاَ. قَالَ فَسَمَّانِى غُدَرَ.



٥٦٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ: ...وَإِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ أَبَرَّ الْبِرِّ صِلَةُ الْوَلَدِ أَهْلَ وُدِّ أَبِيهِ."



٥٦١- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لِكُلِّ غَادِرٍ لِوَاءٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ يُعْرَفُ بِهِ..."



**558.** Zeyd bin Eslem (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku gotiye: "Min ji Umer bin el-Xettab (r.) bihîst digot: 'Rojekî Resûlê Xwedê (s.) emrê me kir ku em sedeqe bidin. Vêca wê demê (qederek) malê min hebû. Min ji xwe re got: 'Heke rojekî ez ji Ebû Bekir bibûrim ezê îro jê bûrim.' Min nîvê malê xwe anî. Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma te çi ji aîla xwe re hiştiye?'* Min got: 'Biqasî vî.' Piştre Ebû Bekir (r.) malê xwe tev anî û hat. Resûlê Xwedê (s.) jê pirsî: *'Ma te çi ji aîla xwe re hiştiye?'* Ebû Bekir got: 'Min ji wan re Xwedê û Resûlê Wî hiştiye.' Vêca min got: 'Ji vir şûnde ez di tu tiştî de bi te re pêşbaziyê nakim.'"

(D1678 Ebû Dawûd, Zekat, 40; T3675 Tirmizî, Menaqib, 16)

# WEFAKARÎ
## QEDIRNASÎ

**559.** Nu'man bin Beşîr (r.) gotiye: "Ji Taifê hinek tirh bi hediye hate ji Resûlê Xwedê (s.) re. Vêca Resûlê Xwedê (s.) Gazî min kir û got: 'Vî weşiyê bigire bibe ji dayîka xwe re.' Belê hê min nebirî ji dayîka xwe re min ew weşî xar. Piştî çend rojan Resûlê Xwedê (s.) ji min pirsî: *'Çi bû ji wî weşiyê tirh? Ma te gihande dayîka xwe?'* Min got: 'Nexêr.' Vêca Resûlê Xwedê (s.) piştî hingî navê min kir '*xuder*', *yanî, Bêwefa.*'"

(ÎM3368 Ibn Maceh, Et'ime, 61)



**560.** Ji Ebdullah bin Umer (r.)... hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Baştirê qenciyê, ewe zarok ziyareta dostên bavê xwe bikin.'*"

(M6513 Muslim, Birr we sile, 11)



**561.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Roja Qiyametê her bêwefayek alayek wî heye pê tê naskirin..."*

(M4536 Muslim, Cîhad we siyer, 14)



٥٦٢- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهَا قَالَتْ: مَا غِرْتُ عَلَى أَحَدٍ مِنْ نِسَاءِ النَّبِيِّ ﷺ مَا غِرْتُ عَلَى خَدِيجَةَ وَمَا رَأَيْتُهَا، وَلَكِنْ كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يُكْثِرُ ذِكْرَهَا، وَرُبَّمَا ذَبَحَ الشَّاةَ، ثُمَّ يُقَطِّعُهَا أَعْضَاءً، ثُمَّ يَبْعَثُهَا فِي صَدَائِقِ خَدِيجَةَ، فَرُبَّمَا قُلْتُ لَهُ: كَأَنَّهُ لَمْ يَكُنْ فِي الدُّنْيَا امْرَأَةٌ إِلاَّ خَدِيجَةُ، فَيَقُولُ: "إِنَّهَا كَانَتْ وَكَانَتْ، وَكَانَ لِي مِنْهَا وَلَدٌ."

# PÊKANÎNA SOZÊ
## DI SOZDANÊ DE SEDAQET

٥٦٣- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: مَا خَطَبَنَا نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ إِلَّا قَالَ: "لَا إِيمَانَ لِمَنْ لَا أَمَانَةَ لَهُ، وَلَا دِينَ لِمَنْ لَا عَهْدَ لَهُ."



٥٦٤- عَنْ أَبِي بَكْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قَتَلَ مُعَاهِدًا فِي غَيْرِ كُنْهِهِ حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ."



٥٦٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ تُمَارِ أَخَاكَ وَلاَ تُمَازِحْهُ وَلاَ تَعِدْهُ مَوْعِدَةً فَتُخْلِفَه."



**562.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Digel ku min nedîtibû jî awayê min zikreşiya Xedîceyê dikir min zikreşiya tu xanimên Pêxember (s.) yên dîtir nedikir. Resûlê Xwedê (s.) zêde behsa wê dikir. Carna jî mihek ser jê dikir û dikire qet qet û piştre, ji dost û hevalê Xwedîceyê re dişiyand. Carna jî min digot: 'Tu dibêjê qey li ser rûyê erdê ji bilî Xedîcê jin çênebûne.' Vêca ewî jî digot: *'Xedîce wiha bû û Xwedîce bi vî miqamî bû, serde jî, jê zarokên min hene.'*"

(B3818 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 20)

# PÊKANÎNA SOZÊ
## DI SOZDANÊ DE SEDAQET

**563.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "Çi cara Resûlê Xwedê (s.) ji me re xutbe xwendî, mitleqa ev gotin ji me re digot: *"Kesê rîayeta emanetî neke ew bê îman e; kesê soza xwe pêkneyne ew bê dîn e."*"

(HM12410 Ibn Hanbel, III, 134)



**564.** Ji Ebû Bekrete (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê zimmiyekî (hemwelatiyê ne Misilmanê peymandayî) di halê peymandayî de bikuje, Xwedê ji wî re cennetê heram dike."*

(D2760 Ebû Dawûd, Cîhad, 153)



**565.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi birayê xwe re minaqeşe neke (ku hûn bibin neyarê hev) û heneka lê neke (ku dilê we ji hev bişkihe) û soza tu neyne cih nediyê."*

(T1995 Tirmizî, Birr we sile, 58)



٥٦٦- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَرْقَمَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِذَا وَعَدَ الرَّجُلُ أَخَاهُ وَمِنْ نِيَّتِهِ أَنْ يَفِيَ لَهُ فَلَمْ يَفِ وَلَمْ يَجِئْ لِلْمِيعَادِ فَلاَ إِثْمَ عَلَيْهِ."



٥٦٧- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "اضْمَنُوا لِي سِتًّا مِنْ أَنْفُسِكُمْ، أَضْمَنْ لَكُمْ الْجَنَّةَ، اصْدُقُوا إِذَا حَدَّثْتُمْ، وَأَوْفُوا إِذَا وَعَدْتُمْ، وَأَدُّوا إِذَا اؤْتُمِنْتُمْ، وَاحْفَظُوا فُرُوجَكُمْ، وَغُضُّوا أَبْصَارَكُمْ، وَكُفُّوا أَيْدِيَكُمْ."

# TEWEKKUL
## LI XWEDÊ EWLE BÛN

٥٦٨- حَدَّثَنَا الْمُغِيرَةُ بْنُ أَبِي قُرَّةَ السَّدُوسِيُّ قَالَ:سَمِعْتُ أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ يَقُولُ: قَالَ رَجُلٌ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَعْقِلُهَا وَأَتَوَكَّلُ أَوْ أُطْلِقُهَا وَأَتَوَكَّلُ؟ قَالَ: "اعْقِلْهَا وَتَوَكَّلْ"



٥٦٩- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَوْ أَنَّكُمْ كُنْتُمْ تَوَكَّلُونَ عَلَى اللَّهِ حَقَّ تَوَكُّلِهِ لَرُزِقْتُمْ كَمَا تُرْزَقُ الطَّيْرُ تَغْدُو خِمَاصًا وَتَرُوحُ بِطَانًا."



**566.** Ji Zeyd bin Erqem (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê sozekî bide birayê xwe û niyeta wî pêkanîna soza xwe be, belê nekarî pêkbîne an jî di wextî de soza xwe nekarî bigire, guneh ji wî kesî re nîn e."*

(D4995 Ebû Dawûd, Edeb, 82)



**567.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hûn ji teref xwe ve ewleyiya şeş tiştan bidin min, ezê jî ewleyiya cennetê bidime we: Dema hûn axivîn rast biaxivin, dema we soz da pêkbînin, dema tiştek emanetî we hate kirin rîayet bikin, namûsa xwe muhafeze bikin, çavê xwe (ji nezera heram) biparêzin û destê xwe (ji heramiyê) dûr bikin."*

(HM23137 Ibn Hanbel, V, 323)

# TEWEKKUL
## LI XWEDÊ EWLE BÛN

**568.** Muxîre bin Ebî Qurre es-Sedûsî, gotiye: "Min ji Enes bin Malik (r.) bihîst digot: 'Zilamekî got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma ez deveha xwe girê bidim û wisa tewekkul bikim an bêgirêdan tewekkul bikim?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Girê bide û wisa tewekkul bike.'*"

(T2517 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 60)



**569.** Ji Umer bin el-Xettab (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke hewe bi rastî tewekkulê Xwedê kiriba, wê hûn, mîna ku çûk sibiha berçîçeqa wan vale diderkevin û êvara têr dizivirin bihatina riziqdan."*

(T2344 Tirmizî, Zuhd, 33; İM4164 Ibn Maceh, Zuhd, 14)



٥٧٠- حَدَّثَنِى عِمْرَانُ قَالَ: قَالَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ : "يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مِنْ أُمَّتِى سَبْعُونَ أَلْفًا بِغَيْرِ حِسَابٍ." قَالُوا: وَمَنْ هُمْ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: "هُمُ الَّذِينَ لاَ يَكْتَوُونَ وَلاَ يَسْتَرْقُونَ، وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ."



٥٧١- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "إِذَا خَرَجَ الرَّجُلُ مِنْ بَيْتِهِ فَقَالَ: بِسْمِ اللَّهِ، تَوَكَّلْتُ عَلَى اللَّهِ، لاَ حَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللَّهِ. قَالَ: يُقَالُ حِينَئِذٍ: هُدِيتَ وَكُفِيتَ وَوُقِيتَ..."

# EFUKIRIN
## CAMÊRÎ

٥٧٢- عَنْ أَبِى إِسْحَاقَ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا عَبْدِ اللَّهِ الْجَدَلِيَّ يَقُولُ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ عَنْ خُلُقِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَتْ: لَمْ يَكُنْ فَاحِشًا وَلاَ مُتَفَحِّشًا وَلاَ صَخَّابًا فِى الْأَسْوَاقِ وَلاَ يَجْزِى بِالسَّيِّئَةِ السَّيِّئَةَ وَلَكِنْ يَعْفُو وَيَصْفَحُ.



٥٧٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا انْتَقَمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِنَفْسِهِ فِى شَيْءٍ يُؤْتَى إِلَيْهِ حَتَّى تُنْتَهَكَ مِنْ حُرُمَاتِ اللَّهِ فَيَنْتَقِمَ لِلَّهِ.



**570.** Ji 'Imran (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji ummeta min wê heftê hezar kes bêhesab çine cennetê."* Gotin: Ya Resûlê Xwedê! Ma ew kîne? Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ew kesên xwe (bi hesinên sorkirî) dax nadin, ewên nivişta bi xwe ve nakin û tewekkula Xwedayê xwe dikin."*

(M524 Muslim, Îman, 371)



**571.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Dema mirov ji mala xwe derkeve û bêje: '*Bîsmîllah, tewekkeltu 'elellah, la hewle we la quwwete îlla bîllah' (Bi navê Xwedê, min tewekkulê Xwedê kir, hêz û qewet tenê bi Xwedê ye.)* wê jê re wiha were gotin: *'Tê hîdayet bibî, îhtiyaciyên te yên werin pêkanîn û tê werî paraztin...'*"

(D5095 Ebû Dawûd, Edeb, 102-103)

# EFUKIRIN
## CAMÊRÎ

**572.** Ebû Îshaq, gotiye: "Min ji Ebû Ebdîllah el-Cedelî (r.) bihîst digot: 'Min pirsa exlaqê Resûlê Xwedê (s.) ji Aîşe (r.) kir. Ewê got: 'Resûlê Xwedê (s.) ne çêrker bû û ne jî devpîs bû, li sûka de bi deng bilindî qîr ne dida, pêşberê xirabiyê xirabî nedikir, belê efû dikir û dibexşand.'"

(T2016 Tirmizî, Birr we sile, 69)



**573.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê ji bo tu neheqiya lê hatî kirin ji bo şexsê xwe heyf nehilaniye (kesek ceza nekiriye). Belê ji bo pêlêkirina heramên Xwedê ji bo Xwedê ceza kiriye."

(B6853 Buxarî, Hudûd, 42)



٥٧٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! كَمْ أَعْفُو عَنِ الْخَادِمِ؟ فَصَمَتَ عَنْهُ النَبِيُّ ﷺ ، ثُمَّ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! كَمْ أَعْفُو عَنِ الْخَادِمِ؟ قَالَ: "كُلَّ يَوْمٍ سَبْعِينَ مَرَّةً."



٥٧٥- قَالَ أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا بُنَيَّ إِنْ قَدَرْتَ أَنْ تُصْبِحَ وَتُمْسِىَ لَيْسَ فِى قَلْبِكَ غِشٌّ لِأَحَدٍ فَافْعَلْ"، ثُمَّ قَالَ لِى: "يَا بُنَيَّ وَذَلِكَ مِنْ سُنَّتِى وَمَنْ أَحْيَا سُنَّتِى فَقَدْ أَحَبَّنِى وَمَنْ أَحَبَّنِى كَانَ مَعِى فِى الْجَنَّةِ."



٥٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَمَا زَادَ اللَّهُ عَبْدًا بِعَفْوٍ إِلاَّ عِزًّا..."

# TEWAZU Û KIBIR

## TEWZU BILIND DIKE, KIBIR NIVZ DIKE

٥٧٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِى قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ" قَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُهُ حَسَنًا وَنَعْلُهُ حَسَنَةً. قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ، الْكِبْرُ: بَطَرُ الْحَقِّ وَغَمْطُ النَّاسِ."



**574.** Ebdullah bin Umer (r.) gotiye: "Zilamek hate cem Resûlê Xwedê (s.) û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ez çend cara xizmetkarî efû bikim?' Resûlê Xwedê dengê xwe nekir. Piştre carek dî got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ez çend cara xizmrtkarî efû bikim?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Her roj heftê carî.'*"

(T1949 Tirmizî, Birr we sile, 31; D5164 Ebû Dawûd, Edeb, 123-124)



**575.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Kurkê min! Heke te karî bigihî sibehê û bigihî êvarê û di dilê te de pêşber tu kesî hîle nebin bike.' Piştre gote min: 'Kurkê min! İha ev sinneta min e. Kesê sinneta min bişûpîne ewî hez ji min kiriye, kesê hez ji min kiribe, wê digel min di cennetê de be."*

(T2678 Tirmizî, Ilim, 16)



**576.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Xwedê ebdê xwe yê efûker zêde bi izzet û şeref dike.*"

(M6592 Muslim, Birr we sile, 69)

# TEWAZU Û KIBIR
## TEWZU BILIND DIKE, KIBIR NIVZ DIKE

**577.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di dilê wî de misqala zerre kibir hebe naçê cennetê."* Vêca zilameki got: 'Bêguman mirov hez dike ku cil û bergên wî û pêlava wî xweşik be.' Resûlê Xwedê (s.) got: "*Bêguman Xwedê xweşik e hez ji xweşiktayiyê dike. Kibir redkirina heqiyê ye û piçûk dîtina mirova ye.*"

(M265 Muslim, Îman, 147)



٥٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَمَا تَوَاضَعَ أَحَدٌ لِلَّهِ إِلاَّ رَفَعَهُ اللَّهُ."



٥٧٩- عَنْ عِيَاضِ بْنِ حِمَارٍ أَخِى بَنِى مُجَاشِعٍ قَالَ: قَامَ فِينَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ذَاتَ يَوْمٍ خَطِيبًا فَقَالَ: وَ إِنَّ اللَّهَ أَوْحَى إِلَيَّ أَنْ تَوَاضَعُوا حَتَّى لاَ يَفْخَرَ أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ وَلاَ يَبْغِى أَحَدٌ عَلَى أَحَدٍ."



٥٨٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"...بِحَسْبِ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ..."

# CESARET Û TIRS
## DU HESTÊN ÎNSANÎ YÊN FITRÎ

٥٨١- عَنْ عَبْدِ الْعَزِيزِ بْنِ مَرْوَانَ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا هُرَيْرَةَ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "شَرُّ مَا فِى رَجُلٍ شُحٌّ هَالِعٌ وَجُبْنٌ خَالِعٌ."



٥٨٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْهَمِّ وَالْحَزَنِ، وَالْكَسَلِ، وَالْبُخْلِ، وَالْجُبْنِ، وَضَلَعِ الدَّيْنِ، وَغَلَبَةِ الرِّجَالِ."



**578.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê ji bo Xwedê tewazu bikê, wê mitleqa Xwedê wî bilind ke."*

(M6592 Muslim, Birr we sile, 69)



**579.** Ji 'Iyad bin Hîmar el-Mucaşi'î (r.) hatiye ragihandin ku rojekî Resûlê Xwedê (s.) rabû nav me de xutbeyek xwend û got: *"Xwedê wehyê min kir ku hûn pêşber hev de tewazu bikin bêweku tu kes dewa fexr û meznatiyê li tu kesî neke û tu kes neheqiyê li tu kesî neke."*

(M7210 Muslim, Cennet, sıfatu n'îmiha we ehliha, 64)



**580.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Ji xirabiyê besî mirovi ye ku birayê xwe yê Misilman kêm û nivz bibîne..."*

(M6541 Muslim, Birr we sile, 32)

# CESARET Û TIRS
## DU HESTÊN ÎNSANÎ YÊN FITRÎ

**581.** Ebdulezîz bin Merwan gotiye: "Min ji Ebû Hureyre (r.) bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: *'Sifetê herî xirab yê di mirovî de, kunûjiya zêde û newêrektiya zêde ye."*

(D2511 Ebû Dawûd, Cihad, 21)



**582.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) digot: '*Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te ji kederê, ji huznê, ji tiraliyê, ji kunûjiyê, ji newêrektiyê, ji barê deynan û ji zêdegaviya mirovan."*

(N5478 Nesaî, Îstî'aze, 25)



٥٨٣- عَنْ أَبِى النَّضْرِ، عَنْ كِتَابِ رَجُلٍ مِنْ أَسْلَمَ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ يُقَالُ لَهُ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ أَبِى أَوْفَى، فَكَتَبَ إِلَى عُمَرَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ، حِينَ سَارَ إِلَى الْحَرُورِيَّةِ، يُخْبِرُهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ، كَانَ فِى بَعْضِ أَيَّامِهِ الَّتِى لَقِيَ فِيهَا الْعَدُوَّ، يَنْتَظِرُ حَتَّى إِذَا مَالَتِ الشَّمْسُ قَامَ فِيهِمْ فَقَالَ: ”يَا أَيُّهَا النَّاسُ! لاَ تَتَمَنَّوْا لِقَاءَ الْعَدُوِّ وَاسْأَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ، فَإِذَا لَقِيتُمُوهُمْ فَاصْبِرُوا، وَاعْلَمُوا أَنَّ الْجَنَّةَ تَحْتَ ظِلاَلِ السُّيُوفِ.“



٥٨٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ أَحْسَنَ النَّاسِ، وَأَجْوَدَ النَّاسِ، وَأَشْجَعَ النَّاسِ، وَلَقَدْ فَزِعَ أَهْلُ الْمَدِينَةِ ذَاتَ لَيْلَةٍ فَانْطَلَقَ النَّاسُ قِبَلَ الصَّوْتِ، فَاسْتَقْبَلَهُمُ النَّبِيُّ ﷺ قَدْ سَبَقَ النَّاسَ إِلَى الصَّوْتِ...

# HEQÊ BIRATIYÊ
## MUMIN TEV BIRANE

٥٨٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”...حَسْبُ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ.“



٥٨٦- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ”لاَ يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ.“



**583.** Ebu'n-Nadr, ji nameya zilamek ji qebîla Eslem û ji sehabiyê Pêxember (s.) ku navê wî Ebdullah bin Ebî Ewfa ye neql kiriye ku Ebdullah bin Ebî Ewfa, ev name dema ku di rêya herba Herûriyan (Xaricî) de bû ji Umer bin Ubeydillah re nvîsî bû. Di nameyê de digot: "Dema Resûlê Xwedê (s.) di herbeka ku liqayî neyar hatî de bû, ma sekinî heta tavê baskî rojava ve meyl kir, rabû ser xwe û got: *'Gelî mirovan! Daxwaza liqabûna neyar nekin. Ji Xwedê daxwaza dûrmayîna ji musîbetê; afiyetê bikin. Vêca dema hûn liqayî neyar hatin sebrê bikin. Zanibin ku cennet di bin siha şûran de ye.'"*

(M4542 Muslim, Cihâd we siyer, 20)



**584.** Enes (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) baştirê mirovan, merdtirê mirovan û wêrektirê mirovan bû. Şevekî ehlê Medînê (bi sehkirina dengek bilind) tirsiha bûn. Vêca mirovan baskî wî dengî ve hereket kirin. Di pêşberê xwe de Resûlê Xwedê dîtin ku pêşiya herkesî derketibû bo ku sebebê wî dengî fêhm bike..."

(B6033 Buxarî, Edeb, 39)

# HEQÊ BIRATIYÊ
## MUMIN TEV BIRANE

**585.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Ji xirabiyê besî mirovi ye ku birayê xwe yê Misilman kêm û nivz bibîne..."*

(D4882 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



**586.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji we heta tişta ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re jî nexazê ewî bawerî/ îman neaniye."*

(B13 Buxarî, Îman,7)



٥٨٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ نَفَّسَ عَنْ مُسْلِمٍ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ الدُّنْيَا نَفَّسَ اللَّهُ عَنْهُ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ يَسَّرَ عَلَى مُعْسِرٍ يَسَّرَ اللَّهُ عَلَيْهِ فِى الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَمَنْ سَتَرَ عَلَى مُسْلِمٍ سَتَرَ اللَّهُ عَلَيْهِ فِى الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَاللَّهُ فِى عَوْنِ الْعَبْدِ مَا كَانَ الْعَبْدُ فِى عَوْنِ أَخِيهِ."



٥٨٨- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِينَ فِى تَوَادِّهِمْ وَتَرَاحُمِهِمْ وَتَعَاطُفِهِمْ مَثَلُ الْجَسَدِ إِذَا اشْتَكَى مِنْهُ عُضْوٌ تَدَاعَى لَهُ سَائِرُ الْجَسَدِ بِالسَّهَرِ وَالْحُمَّى."



٥٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ، فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ، وَلاَ تَحَسَّسُوا، وَلاَ تَجَسَّسُوا، وَلاَ تَنَافَسُوا، وَلاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَ تَبَاغَضُوا، وَلاَ تَدَابَرُوا، وَكُونُوا، عِبَادَ اللَّهِ! إِخْوَانًا."

# NAVÇÎTÎ
## SILHA DI NEQEBA BIRAYAN DE

٥٩٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَبَاغَضُوا، وَلاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَ تَدَابَرُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَانًا، وَلاَ يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلاَثِ لَيَالٍ."



**587.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê tengiyek ji tengiyê dinyayê ji Misilmanekî rake, wê Xwedê tengiyek ji tengiyên axîretê ji wî kesî rake. Kesê karê kesê ketî tengiyê de jê re hêsan bike, wê Xwedê di dinya û di axîretê de karên wî hêsan bike. Kesê eyba misilmanekî veşêre, wê Xwedê eyba wî di dinya û di axîretê de veşêre. Çi qeder ebd alîkariya birayê xwe bike, wê hew qeder Xwedê jî alîkariya wî bike."*

(D4946 Ebû Dawûd, Edeb, 60)



**588.** Ji Nu'man bin Beşîr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin, di hezjihevkirin û lihevmerhemetkirin û di hevdugirtinê de weke bedenekî ne; dema ezayek ji bedenê êşiha beden tev dikeve tayê û bêxewiyê."*

(M6586 Muslim, Birr we sile, 66)



**589.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji zennê biparêzin. Lewra zen derewtirînê gotina ye (derew bixwe ye). Hûn bi dizî guh nedin şitexaliya hevdû, li eyb û kêmasîyên hevdû negerihin, bi hevdû re nekevin pêşbaziya mezinbûnê de, hesûdiya hevdu nekin, ji hevdû neenirin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira."*

(M6536 Muslim, Birr we sile, 28)

# NAVÇÎTÎ
## SILHA DI NEQEBA BIRAYAN DE

**590.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hûn ji hevdû neenirin, hesûdiya hevdu nekin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira. Ne helal e ku misilmanek ser sê rojan re ji birayê xwe yê misilman bixeyîde."*

(B6076 Buxarî, Edeb, 62)



٥٩١- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَلَا أُخْبِرُكُمْ بِأَفْضَلَ مِنْ دَرَجَةِ الصِّيَامِ وَالصَّلَاةِ وَالصَّدَقَةِ: قَالُوا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ! قَالَ: "إِصْلَاحُ ذَاتِ الْبَيْنِ، وَفَسَادُ ذَاتِ الْبَيْنِ الْحَالِقَةُ."



٥٩٢- عَنْ أَبِى أَيُّوبَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "لاَ يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلاَثٍ، يَلْتَقِيَانِ فَيَصُدُّ هَذَا، وَيَصُدُّ هَذَا، وَخَيْرُهُمَا الَّذِى يَبْدَأُ بِالسَّلاَمِ."



٥٩٣- عَنْ حُمَيْدِ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ، عَنْ أُمِّهِ أُمِّ كُلْثُومٍ بِنْتِ عُقْبَةَ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُول: "لَيْسَ بِالْكَاذِبِ مَنْ أَصْلَحَ بَيْنَ النَّاسِ فَقَالَ خَيْرًا، أَوْ نَمَى خَيْرًا."



٥٩٤- عَنْ أَبِى خِرَاشٍ السُّلَمِيِّ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ هَجَرَ أَخَاهُ سَنَةً فَهُوَ كَسَفْكِ دَمِهِ."

# SIHRA GOTINÊ
## HINEK GOTIN BI SIHR IN

٥٩٥- عَنْ زَيْدِ بْنِ أَسْلَمَ قَالَ: سَمِعْتُ ابْنَ عُمَرَ يَقُولُ: جَاءَ رَجُلاَنِ مِنَ الْمَشْرِقِ فَخَطَبَا، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ مِنَ الْبَيَانِ سِحْرًا."



**591.** Ji Ebu'd-Derda (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma ez tişta ku ji rojî, nimêj û sedeqeyê xêrtir (çî ye) ji we re bêjim?"* Gotin: "Belê Ya Resûlê Xwedê!" Pêxember (s.) got: *"Lihevanîna du kesên ji hev xeyîdî. Belê heçîke fesadîçêkirina di neqeba du kesan de ye, ew îmanê ji ra ve qut dike."*

(D4919 Ebû Dawûd, Edeb, 50; T2509 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 56)



**592.** Ji Ebû Eyyûb (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne helal e ji Misilmanî re ku ser sê rojan ji birayê xweyê (Misilman) bi xeyîdê, bêweko dema liqayî hev tên rûyên xwe ji hevdû dizivirînin. Qenctirê wan yê pêşî dest bi silemdanê dike ye."*

(B6237 Buxarî, Îstî'zan, 9)



**593.** Humeyd bin Ebdurrahman ji dayîka xwe Ummu Kulsûm bint 'Uqbe (r.) ragihandiye ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê ji bo lihevanîna mirovên ji hev xeyîdî, gotinên baş bêje an jî şitexilyên baş ji terefekî bigihîne terefê dîtir derewker nayê hesabê."*

(T1938 Tirmizî, Birr we sile, 26)



**594.** Ji Ebû Xîraş es-Sulemî (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê salekî ji birayê xwe yê Misilman bi xeyd bimîne, weke ku xwîna wî rijandî (dikeve guneh de)."*

(D4915 Ebû Dawûd, Edeb, 47; HM18100 Ibn Hanbel, IV, 219)

# SIHRA GOTINÊ
## HINEK GOTIN BI SIHR IN

**595.** Zeyd bin Eslem dibêje: "Min ji Ibn Umer (r.) bihîst digot: 'Ji Şerqê ve du zilam hatin û her yekî axaftinek kir. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *'Bêguman hinek gotin bi sihr in.'*'"

(B5146 Buxarî, Nîkah, 48)



٥٩٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ:"... أُعْطِيتُ جَوَامِعَ الْكَلِمِ..."



٥٩٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ صَدَقَةٌ..."



٥٩٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ..."

# GOTIN MESÛLIYET E

٥٩٩- عَنْ أَبِى مُوسَى رضي الله عنه قَالَ: قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيُّ الْإِسْلاَمِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ."



٦٠٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ..."



**596.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Gotinên têrme'ne bexşê min bûne..."*

(M1167 Muslim, Mesacid, 5; B2977 Buxarî, Cîhad, 122)



**597.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Gotina xweş sedeqe ye..."*

(B2989 Buxarî, Cîhad, 128; M2335 Muslim, Zekat, 56)



**598.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe, bila an xêrê bêje an jî hiş be..."*

(B6475 Buxarî, Rîqaqk, 23; M173 Muslim, Îman, 74)

# GOTIN MESÛLIYET E

**599.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: 'Kîjan Misilman qenctir e? Resûlê Xwedê (s.) got: *'Kesê ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin e."*

(B11 Buxarî, Îman, 5; M163 Muslim, Îman, 66)



**600.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe, bila an xêrê bêje an jî hiş be..."*

(M173 Muslim, Îman, 74; B6018 Buxarî, Edeb, 31)



٦٠١- عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ قَالَ: جَالَسْتُ النَّبِيَّ ﷺ أَكْثَرَ مِنْ مِائَةِ مَرَّةٍ، فَكَانَ أَصْحَابُهُ يَتَنَاشَدُونَ الشِّعْرَ وَيَتَذَاكَرُونَ أَشْيَاءَ مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ، وَهُوَ سَاكِتٌ فَرُبَّمَا تَبَسَّمَ مَعَهُمْ.



٦٠٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ تُمَارِ أَخَاكَ وَلاَ تُمَازِحْهُ وَلاَ تَعِدْهُ مَوْعِدَةً فَتُخْلِفَهُ."

# RASTÎAXAVTIN
## HER DEM RASTAXAVTIN

٦٠٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ يَجْتَمِعُ الْإِيمَانُ وَالْكُفْرُ فِي قَلْبِ امْرِئٍ، وَلَا يَجْتَمِعُ الصِّدْقُ وَالْكَذِبُ جَمِيعًا، وَلَا تَجْتَمِعُ الْخِيَانَةُ وَالْأَمَانَةُ جَمِيعًا."



٦٠٤- عَنْ أَبِي الْحَوْرَاءِ السَّعْدِيِّ قَالَ: قُلْتُ لِلْحَسَنِ بْنِ عَلِيٍّ مَا حَفِظْتَ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ؟ قَالَ: حَفِظْتُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ: "دَعْ مَا يَرِيبُكَ إِلَى مَا لاَ يَرِيبُكَ، فَإِنَّ الصِّدْقَ طُمَأْنِينَةٌ وَإِنَّ الْكَذِبَ رِيبَةٌ."



٦٠٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُحَدِّثَ بِكُلِّ مَا سَمِعَ."



**601.** Cabir bin Semure (r.) gotiye: "Ez ji sed carî zêdetir bi Resûlê Xwedê re rûniştime. Sehabiyên wî ji hev re helbest dixwendin û gelek tiştên derbarê dewra cahiliyetê de bûn ji hev re digotin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) bêdeng guhdarî wan dikir û carna jî digel wan di beşişî."

(T2850 Tirmizî, Edeb, 70)



**602.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi birayê xwe re minaqeşe neke (ku hûn bibin neyarê hev) û heneka lê neke (ku dilê we ji hev bişkihe) û soza tu neyne cih nediyê."*

(T1995 Tirmizî, Birr we sile, 58)

# RASTÎAXAVTIN
## HER DEM RASTAXAVTIN

**603.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di heman demê de di dilê mirovekî de îman û kufr, rastî û derew, emanet û xiyanet bi hev re kom nabin."*

(HM8577 Ibn Hanbel, II, 349)



**604.** Ebu'l-Hewra es-Se'dî gotiye: "Min ji Hesen bin Elî (r.) pirsî: 'Ma tu çi ji Resûlê Xwedê hîn bûyî? Ewî got: 'Ez ji Resûlê Xwedê (s.) vê hîn bûme: *'Dev ji tişta te têxe şibhê de berde, berê xwe bide ya te naêxe şibhê de. Lewra rastbêjî huzûr û êmnayi ye, derewgotin şibhe ye."*

(T2518 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 60)



**605.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji gunehan besî mirovi ye ku her tişta bihîstî bêje."*

(D4992 Ebû Dawûd, Edeb, 80)



٦٠٦- عَنْ سُفْيَانَ بْنِ أَسِيدٍ الْحَضْرَمِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "كَبُرَتْ خِيَانَةً أَنْ تُحَدِّثَ أَخَاكَ حَدِيثًا هُوَ لَكَ بِهِ مُصَدِّقٌ وَأَنْتَ لَهُ بِهِ كَاذِبٌ."



٦٠٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "عَلَيْكُمْ بِالصِّدْقِ، فَإِنَّ الصِّدْقَ يَهْدِى إِلَى الْبِرِّ، وَإِنَّ الْبِرَّ يَهْدِى إِلَى الْجَنَّةِ، وَمَا يَزَالُ الرَّجُلُ يَصْدُقُ وَيَتَحَرَّى الصِّدْقَ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ صِدِّيقًا، وَإِيَّاكُمْ وَالْكَذِبَ، فَإِنَّ الْكَذِبَ يَهْدِى إِلَى الْفُجُورِ، وَإِنَّ الْفُجُورَ يَهْدِى إِلَى النَّارِ، وَمَا يَزَالُ الرَّجُلُ يَكْذِبُ وَيَتَحَرَّى الْكَذِبَ حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ كَذَّابًا."

# MUSAMEHE
## XWEŞDÎTIN

٦٠٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: ...فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ :... "إِنَّمَا بُعِثْتُمْ مُيَسِّرِينَ وَلَمْ تُبْعَثُوا مُعَسِّرِينَ."



٦٠٩- عَنْ أَبِى إِسْحَاقَ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا عَبْدِ اللَّهِ الْجَدَلِيَّ يَقُولُ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ عَنْ خُلُقِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَتْ: لَمْ يَكُنْ فَاحِشًا وَلاَ مُتَفَحِّشًا وَلاَ صَخَّابًا فِى الْأَسْوَاقِ وَلاَ يَجْزِى بِالسَّيِّئَةِ السَّيِّئَةَ وَلَكِنْ يَعْفُو وَيَصْفَحُ.



**606.** Sufyan bin Esîd el-Xedremî (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: *'Çi xiyanetek mezine tu derewa ji birayê xwe yê ku ji te bawer re bikî!'*"

(D4971 Ebû Dawûd, Edeb, 71)



**607.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji rastiyê neveqetihin. Bêguman rastî berê însanî dide başîyê û başî jî berê însan dide cennetê û mirov rast dibêje/rastîyê ji xwe re dike exlaq heta li cem Xwedê ji siddîqan/rastgoyan tê nivîsîn. Xwe ji derewa biparêzin. Bêguman derew berê însan dide xirabiyê û xirabî jî berê însan dide cehnemê û mirov derewa dike heta ku li cem Xwedê ji derewkeran tê nivîsîn."*

(M6639 Muslim, Birr we sile, 105)

# MUSAMEHE
## XWEŞDÎTIN

**608.** Ji Ebû Hureyre (r.) ... hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye:... *"Hûn ji bo hêsankirinê hatine şiyandin, ne ji bo zehmetçêkirinê."*

(T147 Tirmizî, Teharet, 112)



**609.** Ebû Îshaq, gotiye: "Min ji Ebû Ebdîllah el-Cedelî (r.) bihîst digot: 'Min pirsa exlaqê Resûlê Xwedê (s.) ji Aîşe (r.) kir. Ewê got: 'Resûlê Xwedê (s.) ne çêrker bû û ne jî devpîs bû, li sûka de bi deng bilindî qîr ne dida, pêşberê xirabiyê xirabî nedikir, belê efû dikir û dibexşand.'"

(T2016 Tirmizî, Birr we sile, 69)



٦١٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اسْمَحْ يُسْمَحْ لَكَ."



٦١١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ سَمْحَ الْبَيْعِ سَمْحَ الشِّرَاءِ سَمْحَ الْقَضَاءِ."

# RIFQ
## XWEDÊ DI HER TIŞTÎ DE HEZ JI NAZIKTIYÊ DIKE

٦١٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ الْمُؤْمِنُ بِالطَّعَّانِ وَلاَ اللَّعَّانِ وَلاَ الْفَاحِشِ وَلاَ الْبَذِىءِ."



٦١٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"سِبَابُ الْمُسْلِمِ فُسُوقٌ، وَقِتَالُهُ كُفْرٌ."



٦١٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ:"الْمُسْتَبَّانِ مَا قَالاَ، فَعَلَى الْبَادِئِ، مَا لَمْ يَعْتَدِ الْمَظْلُومُ."



**610.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi xweşdîtin miamele bike de qene bi te re jî bi xweş dîtin were miamelekirin."*

(HM2233 Ibn Hanbel, I, 249)



**611.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê hez ji kiryarê nerm, firoşerê nerm û kesê deynxweş dike."*

(T1319 Tirmizî, Buyû', 75)

# RIFQ
## XWEDÊ DI HER TIŞTÎ DE HEZ JI NAZIKTIYÊ DIKE

**612.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin, ne te'ndar e, ne lenetker e, ne fehş e û ne jî zimanpîs e."*

(T1977 Tirmizî, Birr we sile, 48; HM3839 Ibn Hanbel, I, 405)



**613.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çêrkirina muminî fasiqi ye û herbkirina pêre kafiri ye."*

(B6044 Buxarî, Edeb, 44)



**614.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gunehên du kesên çêr li hev kirîn ji yê pêşî çêr kirî re ye, nabêjim ku yê mezlûm zêdegavî kiribe."*

(M6591 Muslim, Birr we sile, 68)



٦١٥- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهَا قَالَتْ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ :"لاَ تَسُبُّوا الأَمْوَاتَ فَإِنَّهُمْ قَدْ أَفْضَوْا إِلَى مَا قَدَّمُوا."

# XIYBET Û SEB
## WEKE XWARİNA GOŞTÊ BIRAYÊ XWE XIRAB E

٦١٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَتَدْرُونَ مَا الْغِيبَةُ؟ قَالُوا: اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: "ذِكْرُكَ أَخَاكَ بِمَا يَكْرَهُ" قِيلَ: أَفَرَأَيْتَ إِنْ كَانَ فِى أَخِى مَا أَقُولُ؟ قَالَ: "إِنْ كَانَ فِيهِ مَا تَقُولُ، فَقَدِ اغْتَبْتَهُ، وَإِنْ لَمْ يَكُنْ فِيهِ، فَقَدْ بَهَتَّهُ."



٦١٧- عَنْ أَبِى بَرْزَةَ الأَسْلَمِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ مَنْ آمَنَ بِلِسَانِهِ وَلَمْ يَدْخُلِ الْإِيمَانُ قَلْبَهُ: لاَ تَغْتَابُوا الْمُسْلِمِينَ وَلاَ تَتَّبِعُوا عَوْرَاتِهِمْ فَإِنَّهُ مَنِ اتَّبَعَ عَوْرَاتِهِمْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ، وَمَنْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ يَفْضَحْهُ فِى بَيْتِهِ."



٦١٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُحَدِّثَ بِكُلِّ مَا سَمِعَ."



615. Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sixêfa nekin miriya. Lewra ew gihatine emelên xwe yê berî xwe (di dinyayê de) şiyandîn."*

(B1393 Buxarî, Cen'iz, 97)

# XIYBET Û SEB
## WEKE XWARİNA GOŞTÊ BIRAYÊ XWE XIRAB E

616. Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma hûn zanin xiybet çiye?"* Gotin: "Xwedê û Resûlê Wî çêtir zanin." Resûlê Xwedê (s.) got: *"(Xiybet) tu behsa birayê xwe bi tişteka ku nevê biki ye."* Hate gotin: "Ma heke ew tişta min gotî di birayê min de hebe tu çi dibêjî?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Heke tişta te gotî di birayê te de hebe te xiybeta wî kiriye, heke tê de nebe te îftîra lê kiriye."*

(M6593 Muslim, Birr we sile, 70)



617. Ji Ebû Berze el-Eslemî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî ew kesên bi devê xwe îman anîn, belê îman neketî dilê wan de! Xiybeta Misilmana nekin û li qusûrê wan negerihin. Lewra kesê li qusûrê Misilmanan bigerihê wê Xwedê jî li qusûrê wî bigerihe û kesê ku Xwedê li qusûrê wî bigerihe wê wî di mala wî bi Xwedê jî be wê rezîl bike."*

(D4880 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



618. Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji gunehan besî mirovi ye ku her tişta bihîstî bêje."*

(D4992 Ebû Dawûd, Edeb, 80)



٦١٩- عَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حَرَّمَ عَلَيْكُمْ عُقُوقَ الْأُمَّهَاتِ، وَوَأْدَ الْبَنَاتِ، وَمَنْعًا وَهَاتِ. وَكَرِهَ لَكُمْ ثَلاَثًا قِيلَ وَقَالَ، وَكَثْرَةَ السُّؤَالِ، وَإِضَاعَةَ الْمَالِ."



٦٢٠- فَقَالَ حُذَيْفَةُ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ:"لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ قَتَّاتٌ."

# ŞILTAQÎ
## BÊRÛTIYA BO MENFEETÊ

٦٢١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ أَنْ نَحْثُوَ فِى أَفْوَاهِ الْمَدَّاحِينَ التُّرَابَ.



٦٢٢- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: أَثْنَى رَجُلٌ عَلَى رَجُلٍ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: "وَيْلَكَ قَطَعْتَ عُنُقَ أَخِيكَ -ثَلاَثًا- مَنْ كَانَ مِنْكُمْ مَادِحًا لاَ مَحَالَةَ فَلْيَقُلْ: أَحْسِبُ فُلاَنًا وَاللَّهُ حَسِيبُهُ وَلاَ أُزَكِّى عَلَى اللَّهِ أَحَدًا، إِنْ كَانَ يَعْلَمُ."



**619.** Ji Muxîre bin Şube (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê Ezze we Celle neheqiya li dayîka, binaxkirina zarokên qîz bi zindî, redkirina karê ketî ser mila û xwestina tiştên neheqkirî ji we re heram kiriye. Sê tişt jî layîqê we nedîtiye: Gotgotin, zêde pirsîn û hederkirina malî."*

(M4483 Muslim, Eqdiye, 12)



**620.** Huzeyfe (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Mifsid naçine cennetê.'*"

(B6056 Buxarî, Edeb, 50; M290 Muslim, Îman, 168)

# ŞILTAQÎ
## BÊRÛTIYA BO MENFEETÊ

**621.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) emrê me kir ku em axê li devê şiltaqan biwerînin."

(T2394 Tirmizî, Zuhd, 54; M7505 Muslim, Zuhd ve reqa'iq, 68)



**622.** Ebdurrehman bin Ebî Bekrete (r.) bi rêya bavê xwe ragihandiye ku zilamekî li cem Resûlê Xwedê (s.) medhê zilamekî kir. Vêca Resûlê Xwedê (s.) sê cara dubare kir û got: *"Heyf ji te re! Te sitûyê birayê xwe birî. Heke yekî ji we xwest kesekî medih bike, bila bêje: 'Ez filankesî wisa û wisa zendikim. Wê Xwedê hesabê wî bibîne û ez tu kesî pêşber Xwedê paqij û zelal nakim. -Ev heke ku wî kesî nas dike ye-.'"*

(B6162 Buxarî, Edeb, 95)



٦٢٣- عَنْ مُعَاوِيَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِيَّاكُمْ وَالتَّمَادُحَ، فَإِنَّهُ الذَّبْحُ."

# TINAZLÊKIRIN
## BELKÎ KESÊ LÊ TÊ TINAZKIRIN QENCTIR BE!

٦٢٤- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا أُحِبُّ أَنِّى حَكَيْتُ أَحَدًا وَأَنَّ لِى كَذَا وَكَذَا."



٦٢٥- عَنْ وَاثِلَةَ بْنِ الأَسْقَعِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تُظْهِرِ الشَّمَاتَةَ لأَخِيكَ فَيَرْحَمُهُ اللَّهُ وَيَبْتَلِيك."



٦٢٦- عَنْ عَائِشَةَ... قَالَتْ: فَقُلْتُ: "يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ صَفِيَّةَ امْرَأَةٌ" وَقَالَتْ بِيَدِهَا هَكَذَا كَأَنَّهَا تَعْنِى قَصِيرَةً. فَقَالَ: "لَقَدْ مَزَجْتِ بِكَلِمَةٍ لَوْ مُزِجَ بِهَا مَاءُ الْبَحْرِ لَمُزِجَ."



٦٢٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...بِحَسْبِ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ..."

**623.** Muawiye ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Xwe ji zêde medihkirina hevdu dûr bikin. Lewra ev (şiklekê) kuştinê ye."*

(ÎM3743 Ibn Maceh, Edeb, 36; HM16962 Ibn Hanbel, IV, 93)

# TINAZLÊKIRIN
## BELKÎ KESÊ LÊ TÊ TINAZKIRIN QENCTIR BE!

**624.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Pêşberê wê de dinya hemiyê jî bidine min, ez cardî jî naxwazim ser yekî ve bikim."*

(T2503 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 51)



**625.** Ji Wasîle bin el-Esqa' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi musîbeta hatî serê birayê te keyfxweşî û şabûnê nîşê neke. Dibe ku Xwedê li wî were rehmê û te bi wê musîbetê îmtîhan bike."*

(T2506 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 54)



**626.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Sefiye jineka hefqaskûk e. Bi destê xwe îşaret kir û xwest bêjê kin e. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Te gotinek wisa got heke ew gotin tevlo behrê bûba wê ew behr guherandiba."*

(T2502 Tirmizî, Sıfata'l-qiyame, 51)



**627.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Ji xirabiyê besî mirovi ye ku birayê xwe yê Misilman kêm û nivz bibîne..."*

(M6541 Muslim, Birr we sile, 32)

# ÎFTÎRA
## CÎNAYETA ZIMAN

٦٢٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "اجْتَنِبُوا السَّبْعَ الْمُوبِقَاتِ." قَالُوا: "يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَا هُنَّ" قَالَ: "الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ، وَقَتْلُ النَّفْسِ الَّتِى حَرَّمَ اللَّهُ إِلاَّ بِالْحَقِّ، وَأَكْلُ الرِّبَا، وَأَكْلُ مَالِ الْيَتِيمِ، وَالتَّوَلِّى يَوْمَ الزَّحْفِ، وَقَذْفُ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ الْغَافِلاَتِ."



٦٢٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنْ أَكْبَرِ الْكَبَائِرِ اسْتِطَالَةَ الْمَرْءِ فِى عِرْضِ رَجُلٍ مُسْلِمٍ بِغَيْرِ حَقٍّ..."



٦٣٠- وَاثِلَةَ بْنَ الأَسْقَعِ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنْ أَعْظَمِ الْفِرَى أَنْ يَدَّعِيَ الرَّجُلُ إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ، أَوْ يُرِيَ عَيْنَهُ مَا لَمْ تَرَ، أَوْ يَقُولَ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَا لَمْ يَقُلْ."



٦٣١- عَنْ أَبِى ذَرٍّ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّهُ سَمِعَ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ يَرْمِى رَجُلٌ رَجُلاً بِالْفُسُوقِ، وَلاَ يَرْمِيهِ بِالْكُفْرِ، إِلاَّ ارْتَدَّتْ عَلَيْهِ، إِنْ لَمْ يَكُنْ صَاحِبُهُ كَذَلِكَ."

# ÎFTÎRA
## CÎNAYETA ZIMAN

**628.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji wan heft gunehên mirovan dibine helakê dûr bêxin."* Gotin: Ya Resûlê Xwedê! Ma ew çine? Got: *"Hebandina şirîka ji Xwedê re, sihir çêkirin, kuştina bi neheqî ya ku Xwedê heram kirî, faîzxwarin, xwarina malê sêwiyan, reva ji herbê û îftîra zinayê li jina mumina haya wê ji tiştek tuneyî kirin."*

(B6857 Buxarî, Hudûd, 44; M262 Muslim, Îman, 145)



**629.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mezintirîn gunehê kebaîr ewe ku yek di derbarê namûs û şerefa Misilmanî de bi neheqî zimanê xwe dirêj bike."*

(D4877 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



**630.** Ji Wasîle bin el-Esqa' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman evana ji mezintirîn cureyên îftîrayê ne: Mirovek xwe nisbetê xeyrê bavê xwe bike, tişta nedîtî bêje min di xewna xwe de dîtiye û gotineka ku Pêxember (s.) negotî nisbetê wî bike."*

(B3509 Buxarî, Menaqib, 5)



**631.** Ji Ebû Zerr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê yekî bi fisqê an jî bi kufrê îtham bike, heke ew ne wisa be wê ev gotin vegere wî bi xwe."*

(B6045 Buxarî, Edeb, 44)

# ZENNA BAŞ Û ZENNA XIRAB
## ZEHFÊN ZENNAN GUNEH IN

٦٣٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ وَلاَ تَحَسَّسُوا وَلاَ تَجَسَّسُوا وَلاَ تَنَافَسُوا وَلاَ تَحَاسَدُوا وَلاَ تَبَاغَضُوا وَلاَ تَدَابَرُوا وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَانًا."



٦٣٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "حُسْنُ الظَّنِّ مِنْ حُسْنِ الْعِبَادَةِ."



٦٣٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِنَّ اللَّهَ يَقُولُ: "أَنَا عِنْدَ ظَنِّ عَبْدِى بِى وَأَنَا مَعَهُ إِذَا دَعَانِى."



٦٣٥- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الأَنْصَارِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَبْلَ مَوْتِهِ بِثَلاَثَةِ أَيَّامٍ يَقُولُ: "لاَ يَمُوتَنَّ أَحَدُكُمْ إِلاَّ وَهُوَ يُحْسِنُ الظَّنَّ بِاللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ."

# ZENNA BAŞ Û ZENNA XIRAB
## ZEHFÊN ZENNAN GUNEH IN

**632.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji zennê biparêzin. Lewra zen derewtirînê gotina ye (derew bixwe ye). Hûn bi dizî guh nedin şitexaliya hevdû, li eyb û kêmasîyên hevdû negerihin, bi hevdû re nekevin pêşbaziya mezinbûnê de, hesûdiya hevdû nekin, ji hevdû neenirin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira."*

(M6536 Muslim, Birr we sile, 28)



**633.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zenna baş ji îbadetê baş e."*

(HM9269 Ibn Hanbel, II, 407; D4993 Ebû Dawûd, Edeb, 81)



**634.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Teala dibêje: 'Ebdê min min çewa bifikirê ez wisa me. Dema dua bike/gazî min bike ez pêre me.'"*

(M6829 Muslim, Zikir, dua, tewbe we îstîxfar, 19)



**635.** Ji Cabir bin Ebdîllah el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst pêşiya mirina xwe bi sê roja wiha digot: *'Bêyî ku hûn husna zennê ji Xwedê Ezze we Celle bikin (hêviya efûkirina Wî bikin) nemirin.'"*

(M7231 Muslim, Cennet we sıfatu ne'îmiha we ehliha, 82)

# TECESSUS
## KURMÊ KU QELB DIKIRÊNE/DIXWE

٦٣٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ:"... مَنِ اسْتَمَعَ إِلَى حَدِيثِ قَوْمٍ وَهُمْ لَهُ كَارِهُونَ أَوْ يَفِرُّونَ مِنْهُ صُبَّ فِى أُذُنِهِ الآنُكُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ..."



٦٣٧- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ يَأْثُرُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ، فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ، وَلاَ تَجَسَّسُوا، وَلاَ تَحَسَّسُوا، وَلاَ تَبَاغَضُوا، وَكُونُوا إِخْوَانًا."



٦٣٨- عَنْ أَبِى بَرْزَةَ الأَسْلَمِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : يَا مَعْشَرَ مَنْ آمَنَ بِلِسَانِهِ وَلَمْ يَدْخُلِ الإِيمَانُ قَلْبَهُ لاَ تَغْتَابُوا الْمُسْلِمِينَ وَلاَ تَتَّبِعُوا عَوْرَاتِهِمْ فَإِنَّهُ مَنِ اتَّبَعَ عَوْرَاتِهِمْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ وَمَنْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ يَفْضَحْهُ فِى بَيْتِهِ."



٦٣٩- عَنْ مُعَاوِيَةَ قَالَ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ:"إِنَّكَ إِنِ اتَّبَعْتَ عَوْرَاتِ النَّاسِ أَفْسَدْتَهُمْ" أَوْ "كِدْتَ أَنْ تُفْسِدَهُمْ."



# TECESSUS
## KURMÊ KU QELB DIKIRÊNE/DIXWE

**636.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê guh bidêre şitexaliya komekî ku naxwazin ew kes bibihîze an jî xwe ji wî dûr têxin, wê Roja Qiyametê risas were rijandin di guhê wî de..."*

(B7042 Buxarî, Te'bîr, 45; D5024 Ebû Dawûd, Edeb, 88)



**637.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji zennê biparêzin. Lewra zen derewtirînê gotina ye (derew bixwe ye). Hûn bi dizî guh nedin şitexaliya hevdû, li eyb û kêmasîyên hevdû negerihin, bi hevdû re nekevin pêşbaziya mezinbûnê de, hesûdiya hevdû nekin, ji hevdû neenirin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira."*

(B5143 Buxarî, Nîkah, 46)



**638.** Ji Ebû Berze el-Eslemî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî ew kesên bi devê xwe îman anîn, belê îman neketî dilê wan de! Xiybeta Misilmana nekin û li qusûrê wan negerihin. Lewra kesê li qusûrê Misilmanan bigerihê wê Xwedê jî li qusûrê wî bigerihe û kesê ku Xwedê li qusûrê wî bigerihe wê wî di mala wî bi Xwedê jî be wê rezîl bike."*

(D4880 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



**639.** Muawiye dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Bêguman heke tu li halê mirovan yên veşartî bigerihê tê di nav wan de fesadiyê derêxê an jî nêzîke ku tuyê derêxe."*

(D4888 Ebû Dawûd, Edeb, 37)



٦٤٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَسْتُرُ عَبْدٌ عَبْدًا فِى الدُّنْيَا إِلاَّ سَتَرَهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."

# WESEWESE
## TELQÎNA ŞEYTÊN

٦٤١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِلشَّيْطَانِ لَمَّةً بِابْنِ آدَمَ وَلِلْمَلَكِ لَمَّةً، فَأَمَّا لَمَّةُ الشَّيْطَانِ فَإِيعَادٌ بِالشَّرِّ وَتَكْذِيبٌ بِالْحَقِّ، وَأَمَّا لَمَّةُ الْمَلَكِ فَإِيعَادٌ بِالْخَيْرِ وَتَصْدِيقٌ بِالْحَقِّ، فَمَنْ وَجَدَ ذَلِكَ فَلْيَعْلَمْ أَنَّهُ مِنَ اللَّهِ فَلْيَحْمَدِ اللَّهَ، وَمَنْ وَجَدَ الْأُخْرَى فَلْيَتَعَوَّذْ بِاللَّهِ مِنَ الشَّيْطَانِ [الرَّجِيمِ]."

٦٤٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: جَاءَ نَاسٌ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ فَسَأَلُوهُ: إِنَّا نَجِدُ فِى أَنْفُسِنَا مَا يَتَعَاظَمُ أَحَدُنَا أَنْ يَتَكَلَّمَ بِهِ، قَالَ: "أَوَقَدْ وَجَدْتُمُوهُ؟" قَالُوا: نَعَمْ. قَالَ: "ذَاكَ صَرِيحُ الْإِيمَانِ."

٦٤٣- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ رضي الله عنه : قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَأْتِى الشَّيْطَانُ أَحَدَكُمْ فَيَقُولُ: مَنْ خَلَقَ كَذَا؟ مَنْ خَلَقَ كَذَا؟ حَتَّى يَقُولَ: مَنْ خَلَقَ رَبَّكَ؟ فَإِذَا بَلَغَهُ فَلْيَسْتَعِذْ بِاللَّهِ وَلْيَنْتَهِ."

**640.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi ebdê/kesê eyba ebdekî/kesekî di dinyayê de veşêre wê Xwedê jî Roja Qiyametê eyba wî veşêre."*

(M6595 Muslim, Birr we sile, 72; HM9033 Ibn Hanbel, II, 389)

# WESEWESE
## TELQÎNA ŞEYTÊN

**641.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şeytan jî û melek jî xwe nêzî benîadem/ademîzad dikin. Nêzîkbûna Şeytan ew e ku berê wî bide neqenciyê û heqqê pê bide tekzîbkirin e, nêzîkbûna melek jî ew e ku berê însan bide xêrê û heqiyê pê bide tesîqkirin e. Kî evê (telqîna Melek) bibîne bila zanibe ev ji Xwedê ye û bila hemdê Xwedê bike û kî ya dîtir (wesweseya Şeytên) hiss bike bila ji şeytanê hatî recimkirin û ji rehmê hatî dûrkirin xwe bispêrîne Xwedê."*

(T2988 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 2)



**642.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Hinek sehabiyên Resûlê Xwedê (s.) hatin û pirsîn: 'Carna di dilê me re tiştin ku em pêxeberdana wê (guneh) hesab dikin derbas dibe.' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma bi rastî hûn hemî vê his dikin?'* Gotin: 'Belê' Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Iha ev îman bixwe ye.'"*

(M340 Muslim, Îman, 209)



**643.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şeytan tê cem yekî ji we û dibêje: 'Ma kî filan tişt afirandiye, ma kî filan tişta henê afirandiye? Heta dibêje: Ma kî Rebbê te afirandiye?' Dema gihate vê deverê, bila îstîaze bike/ xwe bispêrîne Xwedê û bila xwe ji weswesê dûr bike."*

(B3276 Buxarî, Bed'u'l-xelq, 11)



٦٤٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَجَاوَزَ لِأُمَّتِى مَا حَدَّثَتْ بِهِ أَنْفُسَهَا مَا لَمْ يَتَكَلَّمُوا -أَوْ يَعْمَلُوا بِهِ-."



٦٤٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: إِذَا هَمَّ عَبْدِى بِسَيِّئَةٍ فَلاَ تَكْتُبُوهَا عَلَيْهِ، فَإِنْ عَمِلَهَا فَاكْتُبُوهَا سَيِّئَةً، وَإِذَا هَمَّ بِحَسَنَةٍ فَلَمْ يَعْمَلْهَا فَاكْتُبُوهَا حَسَنَةً، فَإِنْ عَمِلَهَا فَاكْتُبُوهَا عَشْرًا."

## KESÊ HÎLAN LI ME BIKE NE JI ME YE

٦٤٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "... وَمَنْ غَشَّنَا فَلَيْسَ مِنَّا."



٦٤٧- عَنْ أَبِى بَكْرٍ الصِّدِّيقِ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ خِبٌّ وَلاَ مَنَّانٌ وَلاَ بَخِيلٌ."



**644.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê, heta pê neştexilî be an jî nekiribe, ummeta min di derbarê her tişta ku di dilê xwe re derbas kirî de efû kiriye (mesuliyet ji ser rakiriye)."*

(M331 Muslim, Îman, 201)



**645.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle gotiye: 'Dema ebdê min niyeta kirina xirabiyekî kir, hûn ewê nenivîsin. Vêca dema ew xirabî kir tenê guneheki jê re binivîsin. Dema ebdê min niyeta kirina emelek qenc kir û nekarî bike jê re xêrekî binivîsênin. Belê heke ew qencî kir, jê re deh xêra binivîsin."*

(M334 Muslim, Îman, 203)

# KESÊ HÎLAN LI ME BIKE NE JI ME YE

**646.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Kesê hîla li me bike ew ne ji me ye..."*

(M283 Muslim, Îman, 164)



**647.** Ji Ebû Bekir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê fesad, kesê minnetê li yê qencî lêkirî dike û kesê kunûj naçine cennetê."*

(T1963 Tirmizî, Birr we sile, 41)



٦٤٨- عَنِ الْحَسَنِ أَنَّ عُبَيْدَ اللَّهِ بْنَ زِيَادٍ عَادَ مَعْقِلَ بْنَ يَسَارٍ فِى مَرَضِهِ الَّذِى مَاتَ فِيهِ. فَقَالَ لَهُ مَعْقِلٌ: إِنِّى مُحَدِّثُكَ حَدِيثًا سَمِعْتُهُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "مَا مِنْ عَبْدٍ اسْتَرْعَاهُ اللَّهُ رَعِيَّةً، فَلَمْ يَحُطْهَا بِنَصِيحَةٍ، ﴿إِلاَّ﴾ لَمْ يَجِدْ رَائِحَةَ الْجَنَّةِ."



٦٤٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يُلْدَغُ الْمُؤْمِنُ مِنْ جُحْرٍ وَاحِدٍ مَرَّتَيْنِ."



٦٥٠- قَالَ أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا بُنَيَّ إِنْ قَدَرْتَ أَنْ تُصْبِحَ وَتُمْسِيَ لَيْسَ فِى قَلْبِكَ غِشٌّ لِأَحَدٍ فَافْعَلْ، يَا بُنَيَّ وَذَلِكَ مِنْ سُنَّتِى وَمَنْ أَحْيَا سُنَّتِى فَقَدْ أَحَبَّنِى وَمَنْ أَحَبَّنِى كَانَ مَعِى فِى الْجَنَّةِ."

# ÎSRAF
## XWEDÊ HEZ JI MISRIFAN NAKE

٦٥١- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: جَاءَ أَعْرَابِيٌّ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ يَسْأَلُهُ عَنِ الْوُضُوءِ فَأَرَاهُ الْوُضُوءَ ثَلاَثًا ثَلاَثًا ثُمَّ قَالَ: "هَكَذَا الْوُضُوءُ فَمَنْ زَادَ عَلَى هَذَا فَقَدْ أَسَاءَ وَتَعَدَّى وَظَلَمَ."



**648.** Ji el-Hesen (el-Besrî) hatiye ragihandin ku Ebdullah bin Ziyad, di nexweşiya ku pê mirî de Me'qil bin Yesar ziyaret kir. Vêca Me'qil jê re got: "Ezê ji te re hedîseka ku min ji Resûlê Xwedê bihîstî bêjim. Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Kesê Xwedê wezîfa rêvebirîna qewmekî dabiyê û ew milet bi semîmiyet û bi durustî îdare ne kiribe, ew kes bêhna cennetê nake."*

(B7150 Buxarî, Ehkam, 8)



**649.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin du cara ji eynî qulê nayê pêvedan."*

(B6133 Buxarî, Edeb, 83)



**650.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Kurkê min! Heke te karî sibeh û êvarî derbas bike û di dilê te de pêşber tu kesî de hîle nebin bike.' Piştre gote min: 'Kurkê min! Vaye sinneta min ev e. Kesê sinneta min bişûpîne ewî hez ji min kiriye, kesê hez ji min kiribe, wê digel min di cennetê de be."*

(T2678 Tirmizî, Ilim, 16)

# ÎSRAF
## XWEDÊ HEZ JI MISRIFAN NAKE

**651.** 'Emr bin Şueyb, bi rêya bavê Xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku zilamek bedewî hate cem Resûlê Xwedê (s.) pirsa destnimêjê jê bike. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ezayê destnimêjê sê car sê car şiştin û destnimêjgirtin nîşanê wî da. Piştre got: *"Destnimêjgirtin bi vî awayi ye. Kesê ji vê zêdetir bike, şaşîtî kiriye, zêdegavî kiriye û neheqî kiriye."*

(N140 Nesaî, Teharet, 105)



٦٥٢- عَنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ بِسَعْدٍ وَهُوَ يَتَوَضَّأُ فَقَالَ: "مَا هَذَا السَّرَفُ؟" فَقَالَ: "أَفِى الْوُضُوءِ إِسْرَافٌ؟" قَالَ: "نَعَمْ، وَإِنْ كُنْتَ عَلَى نَهَرٍ جَارٍ."



٦٥٣- عَنِ الْمُغِيرَةِ بْنِ شُعْبَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ حَرَّمَ عَلَيْكُمْ عُقُوقَ الْأُمَّهَاتِ، وَوَأْدَ الْبَنَاتِ، وَمَنْعَ وَهَاتِ، وَ كَرِهَ لَكُمْ قِيلَ وَقَالَ، وَكَثْرَةَ السُّؤَالِ، وَإِضَاعَةَ الْمَالِ."



٦٥٤- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُوا وَتَصَدَّقُوا وَالْبَسُوا فِى غَيْرِ إِسْرَافٍ وَلاَ مَخِيلَةٍ."



٦٥٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "نِعْمَتَانِ مَغْبُونٌ فِيهِمَا كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ، الصِّحَّةُ وَالْفَرَاغُ."

# ENANIYET

## NEXWEŞIYA KU MIROVAN SERNIZM DIKE

٦٥٦- عَنْ أَنَسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسُ مُحَمَّدٍ بِيَدِهِ لاَ يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لِأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ مِنَ الْخَيْرِ."



**652.** Ebdullah bin ‘Emr (r.) gotiye: “Resûlê Xwedê (s.) di dema ku destnimêj digirt de ber Se‘d re derbas bû û got: *‘Ev çi îsraf e?’* Se’d: got: ‘Ma di destnimêjê de jî îsraf he ye?’ Resûlê Xwedê (s.) got: *‘Erê, welew tu li ser devê şetekî ku diherikê jî be.’*”

(ÎM425 Ibn Maceh, Teharet, 48)



**653.** Ji Muxîre bin Şu‘be (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Bêguman Xwedê Ezze we Celle neheqiya li dayîka, binaxkirina zarokên qîz bi zindî, redkirina karê ketî ser mila û xwestina tiştên neheqkirî ji we re heram kiriye. Sê tişt jî layîqê we nedîtiye: Gotgotin, zêde pirsîn û hederkirina malî.”*

(B2408 Buxarî, Îstîqrad, 19)



**654.** ‘Emr bin Şueyb, bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Bêyî ku hûn îsrafê bikin an jî ser xwe biçin, bixun sedeqeyan bidin û li xwe bikin.”*

(N2560 Nesaî, Zekat, 66)



**655.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Du nîmet hene pirê însanan di derheqê wan de xapane: Sihhet û zemanê vale.”*

(B6412 Buxarî, Rîqaq, 1)

# ENANIYET
## NEXWEŞIYA KU MIROVAN SERNIZM DIKE

**656.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Ez sond dixwim bi Wî Xwedayê ku rihê Muhemmed di destê wî de ye! Kesê ji we heta xêra ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re jî nexazê ewî bawerî/îman neaniye.”*

(N5020 Nesaî, Îman we şera’îtuh, 19)



٦٥٧- عَنْ حَارِثَةَ بْنِ وَهْبٍ الْخُزَاعِيِّ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ "أَلاَ أُخْبِرُكُمْ بِأَهْلِ الْجَنَّةِ، كُلُّ ضَعِيفٍ مُتَضَاعِفٍ لَوْ أَقْسَمَ عَلَى اللَّهِ لأَبَرَّهُ، أَلاَ أُخْبِرُكُمْ بِأَهْلِ النَّارِ كُلُّ عُتُلٍّ جَوَّاظٍ مُسْتَكْبِرٍ."



٦٥٨- عَنْ عَبْدِ الْعَزِيزِ بْنِ مَرْوَانَ قَالَ سَمِعْتُ أَبَا هُرَيْرَةَ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "شَرُّ مَا فِى رَجُلٍ شُحٌّ هَالِعٌ وَجُبْنٌ خَالِعٌ."



٦٥٩- عَنْ ثَوْبَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...لاَ يَؤُمُّ رَجُلٌ قَوْمًا فَيَخُصَّ نَفْسَهُ بِالدُّعَاءِ دُونَهُمْ فَإِنْ فَعَلَ فَقَدْ خَانَهُمْ."

# ILTÎMAS
## ALÎGIRTINA MIROVÊN XWE BI NEHEQÎ

٦٦٠- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَقِيمُوا حُدُودَ اللَّهِ فِى الْقَرِيبِ وَالْبَعِيدِ وَلاَ تَأْخُذْكُمْ فِى اللَّهِ لَوْمَةُ لاَئِمٍ."



**657.** Ji Harise bin Wehb el-Xuza'î (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma ez ehlê cennetê kîne ji hewe re bêjim? Her nefspiçûkê zeîf ê ku bi navê Xwedê sond xar Xwedê wî di sonda wî de xwedan heq dike ye. Ma ez ehlê cehnemê kîne ji hewe re bêjim? Her kesê hov û enanî û bitir e."*

(B6071 Buxarî, Edeb, 61; M7187 Muslim, Cennet we sıfatu ne'îmîha we ehlîha, 46)



**658.** Ebdulezîz bin Merwan gotiye: "Min ji Ebû Hureyre (r.) bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: *'Sifetê herî xirab yê di mirovî de, kunûjiya zêde û newêrektiya zêde ye.*"

(D2511 Ebû Dawûd, Cîhad, 21; HM8246 Ibn Hanbel, II, 320)



**659.** Ji Sewban (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê îmametiya cemaetekî kir, bila tenê ji bo xwe dua neke û hevalê xwe bê dua nehêle. Heke wisa kir bêguman ewî xayîntiya wan kiriye."*

(D90 Ebû Dawûd, Teharet, 43)

## ILTÎMAS
### ALÎGIRTINA MIROVÊN XWE BI NEHEQÎ

**660.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heddên Xwedê (cezayên qanûnî) li ser kesên nêzîk û dûr; herkesî tetbîq bikin. Nebe ku itaba kesekî we ji vê vegerîne."*

(ÎM2540 Ibn Maceh, Hudûd, 3)



٦٦١- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ ... قَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَاخْتَطَبَ فَأَثْنَى عَلَى اللَّهِ بِمَا هُوَ أَهْلُهُ ثُمَّ قَالَ: "أَمَّا بَعْدُ فَإِنَّمَا أَهْلَكَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ أَنَّهُمْ كَانُوا إِذَا سَرَقَ فِيهِمُ الشَّرِيفُ تَرَكُوهُ وَإِذَا سَرَقَ فِيهِمُ الضَّعِيفُ أَقَامُوا عَلَيْهِ الْحَدَّ وَإِنِّى وَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ لَوْ أَنَّ فَاطِمَةَ بِنْتَ مُحَمَّدٍ سَرَقَتْ لَقَطَعْتُ يَدَهَا."



٦٦٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا ضُيِّعَتِ الْأَمَانَةُ فَانْتَظِرِ السَّاعَةَ.." قَالَ: "كَيْفَ إِضَاعَتُهَا يَا رَسُولَ اللَّه!" قَالَ: "إِذَا أُسْنِدَ الأَمْرُ إِلَى غَيْرِ أَهْلِهِ، فَانْتَظِرِ السَّاعَةَ."

# ISTISMAR
## ŞUXLANDINA NIRXÊN DÎNÎ Û ÎNSANÎ JI BU MESLEHETÊN ŞEXSÎ

٦٦٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَعْطُوا الْأَجِيرَ أَجْرَهُ، قَبْلَ أَنْ يَجِفَّ عَرَقُهُ."



٦٦٤- عَنْ سَهْلِ ابْنِ الْحَنْظَلِيَّةِ قَالَ: مَرَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِبَعِيرٍ قَدْ لَحِقَ ظَهْرُهُ بِبَطْنِهِ فَقَالَ: "اتَّقُوا اللَّهَ فِى هَذِهِ الْبَهَائِمِ الْمُعْجَمَةِ فَارْكَبُوهَا وَكُلُوهَا صَالِحَةً."



**661.** Ji xanima Pêxember Aîşe (r.) hatîye ragihandin... Resûlê Xwedê (s.) rabû ser xwe û xutbeyek da, piştî hemd û senayê Xwedê yê layîqê ezameta Wî kir got: *"Sebebê helakbûna qewmên pêşiya we ev bû ku dema yekê xwedan hêzê mezin dizî kiriba ew ceza nedikirin, lê dema yekê zeîfê belengaz dizî kiriba ew ceza dikirin. Ez sond dixwim bi Wî Xwedayê ku rihê min di destê wî de ye! Heke Fatîma keça Muhemmed dizî kir ezê destê wê jê bikim."*

(M4411 Muslim, Hudûd, 9)



**662.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) (li ser pirsa zilamekî bedewî ku got: Ma qiyamet kengiye?) gotiye: *"Dema emanet hate winda kirin, bimîne li hêviya qiyametê."* Wî zilamî got: "Ma windabûna emanetî çewa dibe?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Dema rêvebirina karên mirovan kete destê ne ehlan de bimîne hêviya qiyametê."*

(B6496 Buxarî, Rîqaq, 35)

# ISTISMAR
## ŞUXLANDINA NIRXÊN DÎNÎ Û ÎNSANÎ JI BU MESLEHETÊN ŞEXSÎ

**663.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hêj xwêhdana karkerî zuwa nebûyî ucreta wî bidinê."*

(İM2443 Ibn Maceh, Ruhûn, 4)



**664.** Ji Sehl bin el-Henzeliyye (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) li ber deveheka ku (ji nêza) zikê wê bi pişta wê ve zeliqayî re derbas bû got: *"Derbareyê van heywanên bêziman de ji Xwedê bitirsin! Dema bi kêrî suwarbûnê tên li wan suwar bibin û dema bi kêrî xwarinê tên wan (serjê bikin û) bixun."*

(D2548 Ebû Dawûd, Cihad, 44)



٦٦٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْمُحِلَّ وَالْمُحَلَّلَ لَهُ.



٦٦٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﴿أَنَّهُ﴾ قَالَ: إِنَّهُ لَيَمْنَعُنِى أَنْ أُحَدِّثَكُمْ حَدِيثًا كَثِيرًا، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ تَعَمَّدَ عَلَيَّ كَذِبًا فَلْيَتَبَوَّأْ مَقْعَدَهُ مِنَ النَّارِ."



٦٦٧- عَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ عُمَيْسٍ الْخَثْعَمِيَّةِ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "...بِئْسَ الْعَبْدُ عَبْدٌ يَخْتِلُ الدُّنْيَا بِالدِّينِ... بِئْسَ الْعَبْدُ عَبْدٌ هَوًى يُضِلُّهُ..."

# MALAYANÎ
## GOTINÊN PÛÇ Û KIRINÊN BÊFEYDE

٦٦٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ..."



٦٦٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِنْ حُسْنِ إِسْلاَمِ الْمَرْءِ تَرْكُهُ مَا لاَ يَعْنِيهِ."



**665.** Ebdullah bin Mesûd (r.) gotiye: *“Resûlê Xwedê le‘net li kesê hulletiyê dike û li kesê jê re hulletî tê kirin aniye.”*

(T1120 Tirmizî, Nîkah, 28)



**666.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Tişta men‘a min dike ji zêdegotina hedîsên Pêxember (s.) ji were ev hedîsa Resûlê Xwedê (s.) ye: *“Kesê bi zanebûn gotinekî biderewîn ser devê min bêje, bila cihê xwe di cehnemê de hazir bike.”*

(M3 Muslim, Muqeddime, 2)



**667.** Esma bint ‘Umeys el-Xes‘emiyye (r.) gotiye: “Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: ‘*... Çi pîs ebd e! Yê ku dîn ji dunyayê re dike alet... Çi pîs ebd e! Yê ku hewesa nefsa wî, ewî şaş dike û ji rê derdixe...*”

(T2448 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 17)

# MALAYANÎ
## GOTINÊN PÛÇ Û KIRINÊN BÊFEYDE

**668.** Ji Ebdullah bin ‘Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Misilman ew kesê ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin e...”*

(B10 Buxarî, Îman, 4; M162 Muslim, Îman, 65)



**669.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Terka malayaniyan (gotin û kirinên bêfeyde) ji başbûna misilmantiya mirovi ye.”*

(T2317 Tirmizî, Zuhd, 11; MU1638 Muwatta', Husnu'l-xuluq, 1)



٦٧٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ..."



٦٧١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "نِعْمَتَانِ مَغْبُونٌ فِيهِمَا كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ: الصِّحَّةُ وَالْفَرَاغُ."

# HESED
## AGIRÊ QENCIYÊ DİŞEWITÎNE

٦٧٢- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ رضي الله عنه قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ حَسَدَ إِلاَّ فِى اثْنَتَيْنِ: رَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِى الْحَقِّ، وَرَجُلٌ آتَاهُ اللَّهُ حِكْمَةً فَهْوَ يَقْضِى بِهَا وَيُعَلِّمُهَا."



٦٧٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "إِيَّاكُمْ وَالْحَسَدَ فَإِنَّ الْحَسَدَ يَأْكُلُ الْحَسَنَاتِ كَمَا تَأْكُلُ النَّارُ الْحَطَبَ."



٦٧٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...لاَ يَجْتَمِعَانِ فِى قَلْبِ عَبْدٍ: الْإِيمَانُ وَالْحَسَدُ."



**670.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe, bila an xêrê bêje an jî hiş be..."*

(M173 Muslim, Îman, 74)



**671.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Du nîmet hene pirê însanan di derheqê wan de xapiyane: Sihhet/tendurustî û zemanê vale."*

(B6412 Buxarî, Riqaq, 1; T2304 Tirmizî, Zuhd, 1)

# HESED
## AGIRÊ QENCIYÊ DIŞEWITÎNE

**672.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Hesed (xibtekirin) tenê di du tiştan de durust e: Zilamek ku Xwedê mal dayiyê vêca ew musselletê ser kiriye di heqî û qenciyê de dimezixîne û zilamek ku Xwedê hîkmet/ilim dayiyê vêca ew li gor wê hukum dide û wê dide hîn kirin."*

(B1409 Buxarî, Zekat, 5)



**673.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji hesedê dûr bikin. Lewra mîna ku agir dara dişewitêne û tune dike, wisa jî hesed, emelên qenc dişewitêne dike tune."*

(D4903 Ebû Dawûd, Edeb, 44; İM4210 Ibn Maceh, Zuhd, 22)



**674.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Îman û hesûdî di qelbê ebdekî de kom nabin."*

(N3111 Nesaî, Cihad, 8)



٦٧٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا نَظَرَ أَحَدُكُمْ إِلَى مَنْ فُضِّلَ عَلَيْهِ فِى الْمَالِ وَالْخَلْقِ، فَلْيَنْظُرْ إِلَى مَنْ هُوَ أَسْفَلَ مِنْهُ مِمَّنْ فُضِّلَ عَلَيْهِ."



٦٧٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَبَاغَضُوا، وَلاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَ تَدَابَرُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَانًا..."

# ÎXANET
## EXLAQÊ INKARKIRINÊ

٦٧٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "آيَةُ الْمُنَافِقِ ثَلاَثٌ، إِذَا حَدَّثَ كَذَبَ، وَإِذَا اؤْتُمِنَ خَانَ وَإِذَا وَعَدَ أَخْلَفَ."



٦٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "أَدِّ الأَمَانَةَ إِلَى مَنِ ائْتَمَنَكَ وَلاَ تَخُنْ مَنْ خَانَكَ."



٦٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الإِيمَانُ قَيَّدَ الْفَتْكَ لاَ يَفْتِكُ مُؤْمِنٌ."



**675.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji hewe li kesên di dewlemendî û di şiklê bedenê de ji xwe çêtir meyze kir, bila li kesên ku (di van derbareyan de) ew ji wan çêtir e jî meyze bike."*

(B6490 Buxarî, Riqaq, 30; M7428 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 8)



**676.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hûn ji hevdû neenirin, hesûdiya hevdû nekin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira..."*

(B6076 Buxarî, Edeb, 62; M6526 Muslim, Birr we sile, 23)

# ÎXANET
## EXLAQÊ INKARKIRINÊ

**677.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Elametê minafiqî sisê ne: Dema şitexilî derewa dike, dema tiştek emanet sitand xayîntiyê dike û dema soz da li soza xwe diqulibe."*

(B2749 Buxarî, Wesaya, 8; M211 Muslim, Îman, 107)



**678.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Emanetê kesê tiştek bi emanetî dayî te lê vegerîne. Kesê xayîntî li te kir tu xayîntiyê lê neke."*

(T1264 Tirmizî, Buyû', 38; D3535 Ebû Dawûd, Buyû', Îcare, 79)



**679.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îman, kuştina (kesê peymana ewleyiyê pêre hatî kirin) bi xayîntî men' dike. Mumin (kesê ewleyî sitandî) bi hîle nakuje."*

(D2769 Ebû Dawûd, Cîhad, 157)



٦٨٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لاَ يَخُونُهُ وَلاَ يَكْذِبُهُ وَلاَ يَخْذُلُهُ..."

# RIYA
## RÛMETÎ KIRIN

٦٨١- عَنِ الْمُسْتَوْرِدِ أَنَّهُ حَدَّثَهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "...وَمَنْ قَامَ بِرَجُلٍ مَقَامَ سُمْعَةٍ وَرِيَاءٍ فَإِنَّ اللَّهَ يَقُومُ بِهِ مَقَامَ سُمْعَةٍ وَرِيَاءٍ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



٦٨٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "مَنْ سَمَّعَ سَمَّعَ اللَّهُ بِهِ وَمَنْ رَاءَى رَاءَى اللَّهُ بِهِ."



٦٨٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٦٨٤- عَنْ عَلْقَمَةَ بْنِ وَقَّاصٍ اللَّيْثِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّمَا الأَعْمَالُ بِالنِّيَّاتِ وَإِنَّمَا لِكُلِّ امْرِئٍ مَا نَوَى..."



**680.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Misilman birayê Misilmani ye. Xayîntiyê lê nake, derewa lê nake û wî di tengiyê de tenê nahêle..."*

(T1927 Tirmizî, Birr we sile, 18)

# RIYA
## RÛMETÎ KIRIN

**681.** Ji el-Mustewrid (bin Şeddad bin 'Emr) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*...Kesê mirovekî bixe cihê şuhret û riyakariyê de (bêweku wî li cem mirovan mezin bike bi qedr û bi qîmet bike), wê Xwedê jî Roja Qiyametê wî kesî êxe cihê şuhret û riyakariyê de (bêweko derewkariya wî eşkere bike.)*"

(D4881 Ebû Dawûd, Edeb, 35; DM2776 Darimî, Riqaq, 35)



**682.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê (xêreka kirî bo şuhretê) eşkere bike, wê Xwedê (eyb û gunehên wî yên veşartî) eşkere bike. Kesê (xêrê) jibo riyakariyê bike, wê Xwedê riyakariya wî eşkere bike."*

(B6499 Buxarî, Riqaq, 36; M7476 Muslim, Zuhd we Reqa'iq, 47)



**683.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike."*

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**684.** Ji 'Elqeme bin Weqqas el-Leysî (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Umer bin el-Xettab (r.) bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Bêguman emel li gor niyetê ne. Ji her kesî re tişta ku niyet kirî heye...*"

(D2201 Ebû Dawûd, Telaq, 10-11; B1 Buxarî, Bed'u'l-wehy, 1)



٦٨٥- حَدَّثَنَا أَبُو مُوسَى الأَشْعَرِيُّ ﵁ قَالَ: قَالَ أَعْرَابِيٌّ لِلنَّبِيِّ ﷺ :الرَّجُلُ يُقَاتِلُ لِلْمَغْنَمِ، وَالرَّجُلُ يُقَاتِلُ لِيُذْكَرَ، وَيُقَاتِلُ لِيُرَى مَكَانُهُ، مَنْ فِى سَبِيلِ اللَّهِ؟ فَقَالَ: "مَنْ قَاتَلَ لِتَكُونَ كَلِمَةُ اللَّهِ هِيَ الْعُلْيَا فَهْوَ فِى سَبِيلِ اللَّهِ."



٦٨٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: حَجَّ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى رَحْلٍ رَثٍّ، وَقَطِيفَةٍ تُسَاوِى أَرْبَعَةَ دَرَاهِمَ، أَوْ لاَ تُسَاوِى. ثُمَّ قَالَ: "اللَّهُمَّ حِجَّةٌ لاَ رِيَاءَ فِيهَا وَلاَ سُمْعَةَ."

# XIRABÎ
## NAVEKE DIYÊ ŞERRÊ

٦٨٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ مِنْ شَرِّ النَّاسِ ذَا الْوَجْهَيْنِ الَّذِى يَأْتِى هَؤُلاَءِ بِوَجْهٍ وَهَؤُلاَءِ بِوَجْهٍ."



٦٨٨- عَنْ نَوَّاسِ بْنِ سَمْعَانَ قَالَ أَقَمْتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِالْمَدِينَةِ سَنَةً... فَسَأَلْتُهُ عَنِ الْبِرِّ وَالْإِثْمِ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْبِرُّ حُسْنُ الْخُلُقِ وَالإِثْمُ مَا حَاكَ فِى نَفْسِكَ وَكَرِهْتَ أَنْ يَطَّلِعَ عَلَيْهِ النَّاسُ."



**685.** Ebû Mûsa el-Eş'erî (r.) gotiye: "Bedewiyekî ji Resûlê Xwedê (s.) re got: 'Zilamek heye ji bo bi destkirina xenîmetê herbê dike, zilamek dî heye ji bo were navdan herbê dike, yek dî jî heye ji bo ku were dîtin herbê dike. Vêca kîjan ji van di rêya Xwedê de ye?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Kesê ji bo ku kelîma (dînê) Xwedê bilind bibe herbê dike ew di rêya Xwedê de ye.'"*

(B3126 Buxarî, Ferdu'l-xumus, 10)



**686.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) li ser suwariyeka kurtanê wê kevin û li ser jî mexmelek qedîfe ku çar dirhem dikir an nedikir heyî hec kir. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ev dua kir: *'Xwedayê min! Bike hecceka bê riya û bê dandîtin."*

(İM2890 Ibn Maceh, Menasik, 4)

# XIRABÎ
## NAVEKE DIYÊ ŞERRÊ

**687.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xirabtirînê mirovan ew duruyê diçe bal hineka bi rûyekî û diçe bal hineke dîtir bi rûyek cuda ye."*

(M6630 Muslim, Birr we sile, 98)



**688.** Newwas bin Sem'an (r.) gotiye: "Ez salekî li Medînê digel Resûlê Xwedê mam... Vêca min pirsa qencî û gunehî jê kir. Resûlê Xwedê (s.) got: *'Qencî, exlaqê xweş e û guneh, ew e ku di dil de nesekine û di singê de jî here û were (tereddudê çêke, nerihet bike) û tu nexwaze kes pê bizane."*

(M6517 Muslim, Birr we sile, 15)



٦٨٩- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "اِتَّقِ اللَّهَ حَيْثُمَا كُنْتَ. وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا. وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ."



٦٩٠- عَنْ شُتَيْرِ بْنِ شَكَلٍ عَنْ أَبِيهِ شَكَلِ بْنِ حُمَيْدٍ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ: "يَا رَسُولَ اللَّهِ، عَلِّمْنِى تَعَوُّذًا أَتَعَوَّذُ بِهِ." قَالَ: فَأَخَذَ بِكَفِّى، فَقَالَ: "قُلِ اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ سَمْعِى، وَمِنْ شَرِّ بَصَرِى، وَمِنْ شَرِّ لِسَانِى، وَمِنْ شَرِّ قَلْبِى، وَمِنْ شَرِّ مَنِيِّى."

# ZILM
## GUNEHÊ HERÎ MEZIN

٦٩١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "...الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ لَا يَظْلِمُهُ وَلَا يَخْذُلُهُ وَلَا يَحْقِرُهُ..."



٦٩٢- عَنْ أَنَسٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "انْصُرْ أَخَاكَ ظَالِمًا أَوْ مَظْلُومًا." فَقَالَ رَجُلٌ: "يَا رَسُولَ اللَّهِ أَنْصُرُهُ إِذَا كَانَ مَظْلُومًا، أَفَرَأَيْتَ إِذَا كَانَ ظَالِمًا كَيْفَ أَنْصُرُهُ؟" قَالَ: "تَحْجُزُهُ أَوْ تَمْنَعُهُ مِنَ الظُّلْمِ، فَإِنَّ ذَلِكَ نَصْرُهُ."



**689.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *‘Tu li kûderê bî teqwatiya Xwedê bike (di pêşberê Xwedê de mesûliyeta xwe zanibe) Piştî xirabiyê qenciyeke bike ku wê xirabiyê rake. Bi mirovan re bi exlaqê xweş miamele bike.’*”

(T1987 Tirmizî, Birr we sile, 55)



**690.** Şuteyr bin Şekel (r.) ji bavê xwe Şekel bin Humeyd (r.) ragihandiye ku wiha gotiye: “Ez çûme cem Pêxemberê Xwedê (s.) min got: ‘Ya Resûlê Xwedê! Min bielimîne duayeke ku ez pê xwe pispêrim. Got: ‘Pêxember (s.) bi namilê min girt û got: *‘Bêje: Ey Xwedayê min! Ez ji şerrê guhên xwe, ji şerrê çavên xwe, ji şerrê zimanê xwe, ji şerrê dilê xwe û ji şerrê şehweta xwe xwe dispêrime te.”*

(T3492 Tirmizî, De‘ewat, 74)

# ZILM
## GUNEHÊ HERÎ MEZIN

**691.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Misilman birayê Misilmani ye. Zilmê lê nake û wî di tengiyê de tenê nahêle û heqaretê lê nake.”*

(M6541 Muslim, Birr we sile, 32)



**692.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Zalim jî be û mezlûm jî be alîkariya birayê xwe bike.”* Vêca zilamekî got: “Ya Resûlê Xwedê! Heke mezlûm be ezê alîkariya wî bikim, belê heke zalim be ezê çewa alîkariya wî bikim?” Resûlê Xwedê (s.) got: *“Tuyê wî ji zilmkirinê dûr bêxî an jî tuyê men‘a wî ji zilmê bikî. Iha ev jê re alîkari ye.”*

(B6952 Buxarî, Îkrah, 7)



٦٩٣- عَنْ أَبِى بَكْرٍ الصِّدِّيقِ أَنَّهُ قَال:... وَإِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ النَّاسَ إِذَا رَأَوْا ظَالِمًا فَلَمْ يَأْخُذُوا عَلَى يَدَيْهِ أَوْشَكَ أَنْ يَعُمَّهُمُ اللَّهُ بِعِقَابٍ مِنْهُ."



٦٩٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِمُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ حِينَ بَعَثَهُ إِلَى الْيَمَنِ: "...وَاتَّقِ دَعْوَةَ الْمَظْلُومِ، فَإِنَّهُ لَيْسَ بَيْنَهُ وَبَيْنَ اللَّهِ حِجَابٌ."



٦٩٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الظُّلْمُ ظُلُمَاتٌ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."

# DINYA Û AXÎRET
## DI DINYAYÊ DE BAŞIYÊ BIDE ME Û DI AXÎRETÊ DE JÎ BAŞIYÊ BIDE ME

٦٩٦- سَأَلَ قَتَادَةُ أَنَسًا: أَيُّ دَعْوَةٍ كَانَ يَدْعُو بِهَا النَّبِيُّ ﷺ أَكْثَرَ؟ قَالَ: كَانَ أَكْثَرُ دَعْوَةٍ يَدْعُو بِهَا يَقُولُ: "اللَّهُمَّ آتِنَا فِى الدُّنْيَا حَسَنَةً وَفِى الْآخِرَةِ حَسَنَةً وَقِنَا عَذَابَ النَّارِ."



٦٩٧- عَنْ عُرْوَةَ ...فَلَقِيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عُثْمَانَ فَقَالَ: "يَا عُثْمَانُ إِنَّ الرَّهْبَانِيَّةَ لَمْ تُكْتَبْ عَلَيْنَا..."



**693.** Ebû Bekir es-Siddîq (r.) gotiye: "...Min ji Resûle Xwedê (s.) bihîst digot: *'Dema ku mirovan zalimek dîtin û men'a wî ji zilmê nekirin, nêzîke ku Xwedê ezabek umûmî ser tevan de rêke."*

(T3057 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 5; D4338 Ebû Dawûd, Melahim, 17)



**694.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) dema Muaz bin Cebel (r.) şiyande Yemenê jê re gotiye: "... *Xwe ji nifirê mezlûmî biparêze. Lewra di neqeba duaya mezlûmî û Xwedê de perde nîn e."*

(B1496 Buxarî, Zekat, 63; M121 Muslim, Îman, 29)



**695.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zilm (ji zalimi re) Roja Qiyametê reşa tarî tarî ye."*

(B2447 Buxarî, Mezalim, 8; M6577 Muslim, Birr we sile, 57)

# DINYA Û AXÎRET
## DI DINYAYÊ DE BAŞIYÊ BIDE ME Û DI AXÎRETÊ DE JÎ BAŞIYÊ BIDE ME

**696.** Qetade (r.) ji Enes (r.) pirsî: "Resûlê xwedê (s.) bi zehfî çi dua dikir?" Enes (r.) got: "Resûlê Xwedê (s.) bi zehfî ev dua dikir: *'Xwedayê min! Di dinyayê de başiyê bide me, di axîretê de başiyê bide me û me ji ezabê cehnemê biparêze.'"*

(M6840 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 26)



**697.** Ji 'Urwe (r.) hatiye ragihandin ku (dema Hz. Aîşe (r.) ji Pêxember (s.) re got: "Osman bin Mezûn xwe daye îbadetê û xanima xwe îhmal dike) Vêca dema Resûlê Xwedê liqayî Osman hat jê re wiha got: *"Ey Osman! Emrê me (misilmana) bi ruhbaniyê nehatiye kirin..."*

(HM26418 Ibn Hanbel, VI, 226)



٦٩٨- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ كَانَتِ الْآخِرَةُ هَمَّهُ جَعَلَ اللَّهُ غِنَاهُ فِي قَلْبِهِ وَجَمَعَ لَهُ شَمْلَهُ وَأَتَتْهُ الدُّنْيَا وَهِيَ رَاغِمَةٌ، وَمَنْ كَانَتِ الدُّنْيَا هَمَّهُ جَعَلَ اللَّهُ فَقْرَهُ بَيْنَ عَيْنَيْهِ وَفَرَّقَ عَلَيْهِ شَمْلَهُ وَلَمْ يَأْتِهِ مِنَ الدُّنْيَا إِلاَّ مَا قُدِّرَ لَهُ."



٦٩٩- حَدَّثَنَا قَيْسٌ قَالَ: سَمِعْتُ مُسْتَوْرِدًا أَخَا بَنِي فِهْرٍ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "وَاللَّهِ! مَا الدُّنْيَا فِي الْآخِرَةِ إِلاَّ مِثْلُ مَا يَجْعَلُ أَحَدُكُمْ إِصْبَعَهُ هَذِهِ –وَأَشَارَ يَحْيَى بِالسَّبَّابَةِ– فِي الْيَمِّ فَلْيَنْظُرْ ﴿أَحَدُكُمْ﴾ بِمَ يَرْجِعُ؟



٧٠٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَعْظَمُ النَّاسِ هَمًّا، الْمُؤْمِنُ الَّذِي يَهُمُّ بِأَمْرِ دُنْيَاهُ وَأَمْرِ آخِرَتِهِ."

# DUNYEWÎBÛN Û TIMAYÎ
## DILGIRÊDANA BI TIŞTÊN FANÎ

٧٠١- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَوْ كَانَ لِابْنِ آدَمَ وَادِيَانِ مِنْ مَالٍ لَابْتَغَى وَادِيًا ثَالِثًا وَلاَ يَمْلَأُ جَوْفَ ابْنِ آدَمَ إِلاَّ التُّرَابُ وَيَتُوبُ اللَّهُ عَلَى مَنْ تَابَ."



٧٠٢- عَنْ أَنَسِ بنِ مَالِكٍ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَكْبَرُ ابْنُ آدَمَ، وَيَكْبَرُ مَعَهُ اثْنَانِ: حُبُّ الْمَالِ، وَطُولُ الْعُمُرِ."



**698.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Kesê xema axîreta xwe bixwe, wê Xwedê dewlemendiya dil bidiyê û karê wî jê re lev bîne û wê dinya ne bikeyfa xwe jê re were. Vêca kesê xema wî dinya be, wê Xwedê feqîriya wî êxe nav herdû çavên wî de û kar û barê wî ji hev belav bike û ji bilî miqdarê jê re hatî teqdîr kirin dinya jê re nayê.*"

(T2465 Tirmizî, Sıfatu'l-qiyame, 30)



**699.** Qeys (r.) dibêje: "Min ji Mustewridê Fihrî bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: '*Wellahî, li gor axîretê cihê dinyayê weke yek ji hewe tiliya Xwe (ya îşaretê) li behrê bide ye; Vêca ka binêrin wê tiliya wî çi qeder (av) bi xwe re bîne!*"

(M7197 Muslim, Cennet we sıfatu ne'îmiha we ehliha, 55)



**700.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mirovê herî xemxar ew muminê xema karê dinya xwe û xema karê axîreta xwe dike ye.*"

(İM2143 Ibn Maceh, Tîcaret, 2)

# DUNYEWÎBÛN Û TIMAYÎ
## DILGIRÊDANA BI TIŞTÊN FANÎ

**701.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Heke du newal malê mirovî hebin wê newala siseyan bixwaze. Ne ax be tiştek zikê înasanî têr nake. Xwedê toba kesê tobe dike qebûl dike.*"

(M2415 Muslim, Zekat, 116)



**702.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Însan mezin dibe û du tişt jî pêre mezin dibin: Hezjêkirina mal û xwestina umrê dirêj.*"

(B6421 Buxarî, Riqaq, 5)



٧٠٣- عَنْ كَعْبِ بْنِ عِيَاضٍ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ لِكُلِّ أُمَّةٍ فِتْنَةً وَفِتْنَةُ أُمَّتِى الْمَالُ."



٧٠٤- عَنْ مُطَرِّفٍ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ يَقْرَأُ ﴿أَلْهَاكُمُ التَّكَاثُرُ﴾ قَالَ: "يَقُولُ ابْنُ آدَمَ: مَالِى، مَالِى قَالَ: وَهَلْ لَكَ، يَا ابْنَ آدَمَ مِنْ مَالِكَ إِلاَّ مَا أَكَلْتَ فَأَفْنَيْتَ، أَوْ لَبِسْتَ فَأَبْلَيْتَ، أَوْ تَصَدَّقْتَ فَأَمْضَيْتَ؟"



٧٠٥- أَنَّ حَكِيمَ بْنَ حِزَامٍ رضي الله عنه قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَأَعْطَانِى، ثُمَّ سَأَلْتُهُ فَأَعْطَانِى، ثُمَّ سَأَلْتُهُ فَأَعْطَانِى، ثُمَّ قَالَ: "يَا حَكِيمُ! إِنَّ هَذَا الْمَالَ خَضِرَةٌ حُلْوَةٌ، فَمَنْ أَخَذَهُ بِسَخَاوَةِ نَفْسٍ بُورِكَ لَهُ فِيهِ، وَمَنْ أَخَذَهُ بِإِشْرَافِ نَفْسٍ لَمْ يُبَارَكْ لَهُ فِيهِ كَالَّذِى يَأْكُلُ وَلاَ يَشْبَعُ، الْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفْلَى."



٧٠٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَيْسَ الْغِنَى عَنْ كَثْرَةِ الْعَرَضِ، وَلَكِنَّ الْغِنَى غِنَى النَّفْسِ."

**703.** Ji Ke'b bin 'Iyad (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Her ummetek fitneyek jê re heye û fitna ummeta min mal e.'*"

(T2336 Tirmizî, Zuhd, 26)



**704.** Muterrif (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku gotiye: "Ez çûme cem Resûlê Xwedê (s.) sûretê Elhakumu't-tekasur (fexra bi zêdebûnê hûn mijûl kirin.) dixwend. Piştre got: *'Însan dibêje: Malê min malê min! Ma gelî mirovno! Ji malê te ji bilî yê te xarî û xilas kirî, an li xwe kirî û kevin kirî an jî sedeqe dayî û (bo xêra wê li axîretê bistînî) ji pêşve şiyandî te mal heye?'*"

(M7420 Muslim, Zuhd we reqa'îq, 3)



**705.** Hekîm bin Hîzam (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) (xenîmeta ji Huneynê) xwest (miqdarek) da min. Piştre min cara duyê xwest cardî da min. Min cara sisêyan xwest cardî da min. Piştre got: *'Ey Hekîm! Ev malê dinyayê dilkêş e û şîrîn e. Kesê vî malî bêtimakarî û bi dildewlemendî bistîne wê malê wî jê re bi bereket be. Belê kesê bi hirs û bi timayî bistîne mîna kesê dixwe û têrnabe bereket nakeve malê wî. Destê dide ji destê distîne bilindtir e.'*"

(B1472 Buxarî, Zekat, 50)



**706.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dewlemendî ne pirbûna mal e. Belê dewlemendî dewlemendiya dil e."*

(B6446 Buxarî, Riqaq, 15; M2420 Muslim, Zekat, 120)

# ÇAVLÊKIRIN
## ESLÊ XWE WINDAKIRIN

٧٠٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَسْدِلُ شَعَرَهُ، وَكَانَ الْمُشْرِكُونَ يَفْرُقُونَ رُءُوسَهُمْ. فَكَانَ أَهْلُ الْكِتَابِ يَسْدِلُونَ رُءُوسَهُمْ، وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُحِبُّ مُوَافَقَةَ أَهْلِ الْكِتَابِ، فِيمَا لَمْ يُؤْمَرْ فِيهِ بِشَيْءٍ، ثُمَّ فَرَقَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ رَأْسَهُ.



٧٠٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ الْيَهُودَ وَالنَّصَارَى لاَ يَصْبُغُونَ فَخَالِفُوهُمْ."



٧٠٩- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ تَشَبَّهَ بِقَوْمٍ فَهُوَ مِنْهُمْ."



٧١٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ مَوْلُودٍ إِلاَّ يُلِدَ عَلَى الْفِطْرَةِ، فَأَبَوَاهُ يُهَوِّدَانِهِ وَيُنَصِّرَانِهِ وَيُشَرِّكَانِهِ."

# ÇAVLÊKIRIN
## ESLÊ XWE WINDAKIRIN

**707.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) pora xwe rasterast (ser namilê xwe de) diberda. Muşrikan pora xwe (ji nîvê serê xwe ve) dikirin du par û Ehlê Kîtaba jî (serbest) berdidan. Vêca Resûlê Xwedê (s.) di derbarê mesleyên ku emir pê nehatî kirin de dixwest weke Ehlê Kîtaba bike. Piştre Resûlê Xwedê pora xwe kire du par."

(B3558 Buxarî, Menaqib, 23)



**708.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Cihû û file (Pora xwe yên sipî bûyî) boyax nakin, hûn weke wan nekin."*

(B5899 Buhari, Lîbas, 67)



**709.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê xwe wek qewmekî bike ew jî ji wan e."*

(D4031 Ebû Dawûd, Lîbas, 4)



**710.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her zarok li ser fitret tête dinyayê, vêca dê û bavê wî ewî an dikine cihû an fileh an jî muşrik."*

(M6758 Muslim, Qeder, 23)

٧١١- عَنْ عَامِرِ بْنِ سَعْدِ بْنِ أَبِى وَقَّاصٍ، عَنْ أَبِيهِ ﵁ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعُودُنِى عَامَ حَجَّةِ الْوَدَاعِ مِنْ وَجَعٍ اشْتَدَّ بِى... ثُمَّ قَالَ: "... وَإِنَّكَ لَنْ تُنْفِقَ نَفَقَةً تَبْتَغِى بِهَا وَجْهَ اللَّهِ إِلاَّ أُجِرْتَ بِهَا، حَتَّى مَا تَجْعَلُ فِى فِى امْرَأَتِكَ."



٧١٢- عَنْ أَنَسٍ أَنَّ نَفَرًا مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ سَأَلُوا أَزْوَاجَ النَّبِيِّ ﷺ عَنْ عَمَلِهِ فِى السِّرِّ؟ فَقَالَ بَعْضُهُمْ: لاَ أَتَزَوَّجُ النِّسَاءَ. وَقَالَ بَعْضُهُمْ: لاَ آكُلُ اللَّحْمَ. وَقَالَ بَعْضُهُمْ: لاَ أَنَامُ عَلَى فِرَاشٍ. فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ فَقَالَ: "مَا بَالُ أَقْوَامٍ قَالُوا كَذَا وَكَذَا؟ لَكِنِّى أُصَلِّى وَأَنَامُ، وَأَصُومُ وَأُفْطِرُ، وَأَتَزَوَّجُ النِّسَاءَ، فَمَنْ رَغِبَ عَنْ سُنَّتِى فَلَيْسَ مِنِّى."



٧١٣- عَنْ حُذَيْفَةَ قَالَ: ...سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "فِتْنَةُ الرَّجُلِ فِى أَهْلِهِ وَمَالِهِ وَنَفْسِهِ وَوَلَدِهِ وَجَارِهِ يُكَفِّرُهَا الصِّيَامُ وَالصَّلاَةُ وَالصَّدَقَةُ وَالأَمْرُ بِالْمَعْرُوفِ وَالنَّهْيُ عَنِ الْمُنْكَرِ."



# AÎLE
## HÊLÎNA GERMA KU DÊ Û BAVAN Û ZAROKAN LI XWE DIGIRE

**711.** 'Amir bin Se'd bin Ebî Weqqas (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku gotiye: "Sala Heccetu'l-Weda'ê de Resûlê Xwedê (s.) hatibû serdana min ji ber nexweşiyeke ku li min şideh kiribû... (Dema min jê re got: Dixwazim malê xwe sedeqe bidim) Resûlê Xwedê (s.) got: '... *Di miqabilê malê ku te bi hêviya bidestkirina rizaya Xwedê li ehlê mala xwe mezixandî de mitleqa ji te re xêr heye. Heta ji wê luqmeya tu dîxî devê xanima xwe de jî."*

(B1295 Buxarî, Cena'iz, 36)



**712.** Enes (bin Malik) (r.) gotiye: "Hinek sehabiyên Pêxember (s.) çûne cem xanimên wî û pirsa îbadetê Pêxember (s.) yê dema tenê dima dikir kirin. (Vêca pêşber îbadetê Resûlê Xwedê (s.) îbadetê xwe kêm dîtin) Yekî got: 'Ez qet bi pîrekan re nazewicim', yekî jî got: 'Ez goşt naxum.', yê dîtir got: 'Ez li ser doşekê narazim.' (Dema xebera van kesan gihate Resûlê Xwedê) rabû ser xwe hemd û senayê Xwedê kir û got: *'Çi bûye ji hinekan rabûne halo û halo gotine? Ez nimêj jî dikim û dirazihim jî, ez rojî jî digirim û difitirim jî, ez bi pîrekan re jî dizewicim. Vêca kesê ji sinneta min berê xwe bizivirîne ew ne ji min e."*

(M3403 Muslim, Nîkah, 5)



**713.** Huzeyfe (r.) gotiye: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'İnsan bi ehlê xwe, bi malê xwe, bi nefsa xwe, bi zarokê xwe û bi cîranê xwe tê îmtîhan kirin. Vêca rojî, nimêj, sedeqe, emrê bi qenciyê û men'a ji xirabiyê dibine kefaret (ji qusûrên ku di vê îmtîhanê de kirîn re.)'"*

(M7268 Muslim, Fîten we eşratu's-saa, 26; B525 Buxarî, Mevakîtûu's-Salat, 4)



٧١٤- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خَيْرُكُمْ خَيْرُكُمْ لِأَهْلِهِ، وَأَنَا خَيْرُكُمْ لِأَهْلِي..."



٧١٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما: أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "كُلُّكُمْ رَاعٍ وَمَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، فَالإِمَامُ رَاعٍ وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالرَّجُلُ فِي أَهْلِهِ رَاعٍ وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ، وَالْمَرْأَةُ فِي بَيْتِ زَوْجِهَا رَاعِيَةٌ وَهْيَ مَسْئُولَةٌ عَنْ رَعِيَّتِهَا، وَالْخَادِمُ فِي مَالِ سَيِّدِهِ رَاعٍ، وَهْوَ مَسْئُولٌ عَنْ رَعِيَّتِهِ."

# MALDANÎ
## HÊLÎN ÇÊKIRIN

٧١٦- فَقَالَ عَبْدُ اللَّهِ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ شَبَابًا لاَ نَجِدُ شَيْئًا، فَقَالَ لَنَا رَسُولُ اللَّهُ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ الشَّبَابِ! مَنِ اسْتَطَاعَ مِنْكُمُ الْبَاءَةَ فَلْيَتَزَوَّجْ، فَإِنَّهُ أَغَضُّ لِلْبَصَرِ وَأَحْصَنُ لِلْفَرْجِ..."



**714.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenctirê we ew kesê ji maliyê xwe re qenctir e. Ez ji maliyê xwe re qenctirê hewe me..."*

(T3895 Tirmizî, Menaqib, 63)



**715.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Hûn hemî mesûl in û hûn hemî ji yên bin hîmaya we de ne berpirsiyar in. Serokê dewletê mesûl e, ew ji (hemwelatî) yên rêvebertiya wan dike mesûl e. Mêr mesûl e, ew mesûlê kesên rêvebertiya wan dike ye. Jin mesûla mala hevserê xwe ye û ew mesûlê wayên rêvebertiya wan dike ye. Xulam jî mesûlê malê axayê xwe ye û ew jî mesûlê yê rêvebertiya wan dike ye."*

(B2409 Buxarî, Îstîqrad, 20)

# MALDANÎ
## HÊLÎN ÇÊKIRIN

**716.** Ebdullah (bin Mesûd) (r.) gotiye: "Em çend xortên ku îmkana wa ya zewacê tuneyî li cem Resûlê Xwedê (s.) bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji me re got: *'Gelî xorta! Kesê ji hewe îmkana zewacê hebe bila bizewice. Lewra zewac ji bo paraztina çav ji nezera heram û ji bo muhafezekrina iffetê rêya herî baş e...'*"

(B5066 Buxarî, Nîkah, 3; M3398 Muslim, Nîkah, 1)



٧١٧- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِذَا أَنْفَقَ الرَّجُلُ عَلَى أَهْلِهِ يَحْتَسِبُهَا فَهُوَ لَهُ صَدَقَةٌ."



٧١٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُضَيِّعَ مَنْ يَقُوتُ."



٧١٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُكُمْ خَيْرُكُمْ لِأَهْلِهِ. وَأَنَا خَيْرُكُمْ لِأَهْلِى."

# ZEWAC
## LEVAKIRINA HEYATÊ

٧٢٠- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "النِّكَاحُ مِنْ سُنَّتِى. فَمَنْ لَمْ يَعْمَلْ بِسُنَّتِى فَلَيْسَ مِنِّى، وَتَزَوَّجُوا، فَإِنِّى مُكَاثِرٌ بِكُمُ الأُمَمَ..."



٧٢١- فَقَالَ عَبْدُ اللَّهِ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ شَبَابًا لاَ نَجِدُ شَيْئًا، فَقَالَ لَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ الشَّبَابِ، مَنِ اسْتَطَاعَ الْبَاءَةَ فَلْيَتَزَوَّجْ، فَإِنَّهُ أَغَضُّ لِلْبَصَرِ، وَأَحْصَنُ لِلْفَرْجِ، وَمَنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَعَلَيْهِ بِالصَّوْمِ، فَإِنَّهُ لَهُ وِجَاءٌ."



**717.** Ji Ebû Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bi hêviya ecra xwe ji Xwedê bigire (malê xwe) li aîla xwe bimezixêne ew jê re sedeqe ye."*

(B55 Buxarî, Îman, 41; M2322 Muslim, Zekat, 48)



**718.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji gunehan besî mirovî ye ku îhmala wan kesên debara wan hilgirtî ser xwe bike."*

(D1692 Ebû Dawûd, Zekat, 45)



**719.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenctirê we ew kesê ji maliyê xwe re qenctir e. Ez ji maliyê xwe re qenctirê hewe me."*

(ÎM1977 Ibn Maceh, Nîkah, 50)

# ZEWAC
## LEVAKIRINA HEYATÊ

**720.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nîkah sinneta min e, kesê li gorî sinneta min emel neke ew ne ji min e. Bizewicin. Lewra ezê (Roja Qiyametê) bi zehfbûna hewe iftîxarê li ummetên dîtir bikim..."*

(ÎM1846 Ibn Maceh, Nîkah, 1)



**721.** Ebdullah (bin Mesûd) (r.) gotiye: "Em çend xortên ku îmkana wa ya zewacê tuneyî li cem Resûlê Xwedê (s.) bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji me re got: *'Gelî xorta! Kesê ji hewe îmkana zewacê hebe bila bizewice. Lewra zewac ji bo paraztina çav ji nezera heram û ji bo muhafezekrina iffetê rêya herî baş e. Kesê îmkana zewacê nebe bila rojî bigire. Lewra rojîgirtin, şehweta wî zeîf dike."*

(B5066 Buxarî, Nîkah, 3)



٧٢٢- عَنْ عَائِشَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "أَنْكِحُوا الصَّالِحِينَ وَالصَّالِحَاتِ."



٧٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تُنْكَحُ الْمَرْأَةُ لأَرْبَعٍ: لِمَالِهَا وَلِحَسَبِهَا وَجَمَالِهَا وَلِدِينِهَا، فَاظْفَرْ بِذَاتِ الدِّينِ تَرِبَتْ يَدَاكَ."

# HEVSER
## HEVALA UMUR

٧٢٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ... يَقُولُ: "تَزَوَّجُوا الْوَدُودَ الْوَلُودَ، إِنِّي مُكَاثِرٌ الأَنْبِيَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



٧٢٥- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "تَخَيَّرُوا لِنُطَفِكُمْ وَانْكِحُوا الأَكْفَاءَ وَأَنْكِحُوا إِلَيْهِمْ."



٧٢٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تُنْكَحُ الْمَرْأَةُ لأَرْبَعٍ: لِمَالِهَا وَلِحَسَبِهَا وَجَمَالِهَا وَلِدِينِهَا، فَاظْفَرْ بِذَاتِ الدِّينِ تَرِبَتْ يَدَاكَ."



**722.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zilamê qenc û pîrekê qenc li hev nîkah bikin."*

(DM2212 Darimî, Nîkah, 10)



**723.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi jinan re bo çar tiştan zewac çêdibe: Bo malê wê, bo neseba wê, bo rindî û delaliya wê û bo dînê wê. Vêca tu ya dîndar bi dest bike. Destê te bi bereket be!"*

(B5090 Buxarî, Nîkah, 16)

# HEVSER
## HEVALA UMUR

**724.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) ... gotiye: *"Bi jinên xwînşîrîn û welûd re bizewicin. Lewra ezê Roja Qiyametê pêşber pêxemberan iftîxarê bi zehfbûna we kim."*

(HM12640 Ibn Hanbel, III, 159)



**725.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bo nesla xwe (jina ku hûn pêre bizewicin) baş hilbijêrin. Bi hemkûfê xwe re bizewicin û (qîzên xwe) bi hemkûfên wan re bizewicînin."*

(ÎM1968 Ibn Maceh, Nîkah, 46)



**726.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi jinan re bo çar tiştan zewac çêdibe: Bo malê wê, bo neseba wê, bo rindî û delaliya wê û bo dînê wê. Vêca tu ya dîndar bi dest bike. Destê te bi bereket be!"*

(B5090 Buxarî, Nîkah, 16)



٧٢٧- عَنْ أَبِى حَاتِمٍ الْمُزَنِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا جَاءَكُمْ مَنْ تَرْضَوْنَ دِينَهُ وَخُلُقَهُ فَأَنْكِحُوهُ، إِلاَّ تَفْعَلُوا تَكُنْ فِتْنَةٌ فِى الأَرْضِ وَفَسَادٌ..."



٧٢٨- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ لَهُ: يَا عَلِيُّ، ثَلاَثٌ لاَ تُؤَخِّرْهَا: الصَّلاَةُ إِذَا آنَتْ، وَالْجَنَازَةُ إِذَا حَضَرَتْ، وَالأَيِّمُ إِذَا وَجَدْتَ لَهَا كُفُؤًا."

## NÎKAH
### PEYMANEK GIRAN

٧٢٩- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ حَدَّثَهُمْ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ تُنْكَحُ الأَيِّمُ حَتَّى تُسْتَأْمَرَ، وَلاَ تُنْكَحُ الْبِكْرُ حَتَّى تُسْتَأْذَنَ"، قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَكَيْفَ إِذْنُهَا؟ قَالَ: "أَنْ تَسْكُتَ."



٧٣٠- عَنْ مُحَمَّدِ بْنِ حَاطِبٍ الْجُمَحِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "فَصْلُ مَا بَيْنَ الْحَرَامِ وَالْحَلاَلِ الدُّفُّ وَالصَّوْتُ."



**727.** Ji Ebû Hatim el-Muzenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema kesekê hûn ji dîn û exlaqê wî razî, hat (xwestina qîza) we, ewî (bi keça xwe re) bizewicênin. Heke hûn wiha nekin, wê li ser erdê fitne û fesadî derkeve..."*

(T1085 Tirmizî, Nîkah, 3)



**728.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Ey Elî! Sê tişta dereng nehêle: Nimêj dema wextê wê hat, cenaze dema hazir bû û jinebî dema te hemkûfê wê dît."*

(T171 Tirmizî, Salat, 13; T1075 Tirmizî, Cena'iz, 73)

# NÎKAH
## PEYMANEK GIRAN

**729.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Heta muwafeqeta pîreka jinebî û heta destûra qîza bakîre newê sitandin nîkâha wan nayê birîn.*" Hinekan gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma izna qîza bakîre çewa (tê sitandin)?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bi bêdengiya wê."*

(B5136 Buxarî, Nîkah, 42)



**730.** Ji Muhemmed bin Hatib el-Cumehî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ferqa di neqeba (têkiliya) heram û (nîkâha) helal, lêdana erbanê û dengê sitiranê ye. (Yanî eşkerekirin e.)"*

(T1088 Tirmizî, Nîkah, 6)



٧٣١- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَحَقَّ الشَّرْطِ أَنْ يُوفَى بِهِ، مَا اسْتَحْلَلْتُمْ بِهِ الْفُرُوجَ."



٧٣٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَمْ يُرَ لِلْمُتَحَابَّيْنِ مِثْلَ النِّكَاحِ."

## NÎKAHA SEHÎH
## JI BO HÊLÎNA SEXLEM

٧٣٣- عَنِ ابْنِ شِهَابٍ قَالَ: أَخْبَرَنِى عُرْوَةُ بْنُ الزُّبَيْرِ أَنَّ عَائِشَةَ زَوْجَ النَّبِيِّ ﷺ أَخْبَرَتْهُ: ...فَلَمَّا بُعِثَ مُحَمَّدٌ ﷺ بِالْحَقِّ هَدَمَ نِكَاحَ الْجَاهِلِيَّةِ كُلَّهُ إِلاَّ نِكَاحَ النَّاسِ الْيَوْمَ.



٧٣٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ شِغَارَ فِى الإِسْلاَمِ."



٧٣٥- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِى طَالِبٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْ مُتْعَةِ النِّسَاءِ يَوْمَ خَيْبَرَ...



**731.** Ji 'Uqbe bin 'Amir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman şertê layiqtirê pêkanînê ew şertê ku we pê jin ji xwe re helal kirîn (mehr) e."*

(M3472 Muslim, Nîkah, 63)



**732.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji nîkahê baştir (tu çare) ji bo zilam û jina dilketiyên hev nîn e."*

(İM1847 Ibn Maceh, Nîkah, 1)

# NÎKAHA SEHÎH
## JI BO HÊLÎNA SEXLEM

**733.** Ibn Şîhab, gotiye: "Urwe bin ez-Zubeyr ji min re got: 'Xanima Pêxember (s.) Aîşe ji min re gotiye: '... Dema Muhemmed (s.) bi dînê heq hate şiyandin, ji bilî nîkâha ku mirov îro dişopênin ew nîkahên dîtir tev betal kirin."

(B5127 Buxarî, Nîkah, 37; D2272 Ebû Dawûd, Telaq, 32-33)



**734.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di Îslamê de berdêlî nîn e."*

(M3468 Muslim, Nîkah, 60)



**735.** Ji Elî bin Ebî Talib (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Herba Xeyberê nîkaha mut'eyê heram kir.

(M5005 Muslim, Sayd we zebâah, 22; B5115 Buxarî, Nîkah, 32)



٧٣٦- حَدَّثَنِى الرَّبِيعُ بْنُ سَبْرَةَ الْجُهَنِيُّ أَنَّ أَبَاهُ حَدَّثَهُ، أَنَّهُ كَانَ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! إِنِّى قَدْ كُنْتُ أَذِنْتُ لَكُمْ فِى الِاسْتِمْتَاعِ مِنَ النِّسَاءِ، وَإِنَّ اللَّهَ قَدْ حَرَّمَ ذَلِكَ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ، فَمَنْ كَانَ عِنْدَهُ مِنْهُنَّ شَيْءٌ فَلْيُخَلِّ سَبِيلَهُ، وَلاَ تَأْخُذُوا مِمَّا آتَيْتُمُوهُنَّ شَيْئًا."

# MERASIMA ZEWACÊ
## DAWET

٧٣٧- عَنْ مُحَمَّدِ بْنِ حَاطِبٍ الْجُمَحِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "فَصْلُ مَا بَيْنَ الْحَرَامِ وَالْحَلاَلِ الدُّفُّ وَالصَّوْتُ."



٧٣٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "أَعْلِنُوا هَذَا النِّكَاحَ وَاجْعَلُوهُ فِى الْمَسَاجِدِ، وَاضْرِبُوا عَلَيْهِ بِالدُّفُوفِ."



٧٣٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "الْوَلِيمَةُ أَوَّلَ يَوْمٍ حَقٌّ. وَالثَّانِى مَعْرُوفٌ. وَالثَّالِثُ رِيَاءٌ وَسُمْعَةٌ."



**736.** Er-Rebî bin Sebre el-Cuhenî, gotiye: "Bavê min ji min re got: 'Demeka ku ez digel Resûlê Xwedê (s.) bûm, got: *'Gelî mirova! Min izna we dabû ku hûn bi pîreka re nîkâha mut'eyê bikin. Belê Xwedê ew heta Roja Qiyametê heram kiriye. Kesê li cemê jineka ku pêre bi nîkâha mut'eyê zewicî hebe bila wê berdê. Û çi tişta we dabê wan ji wan nestînin."*

(M3422 Muslim, Nîkah, 21)

# MERASIMA ZEWACÊ
## DAWET

**737.** Ji Muhemmed bin Hatib el-Cumehî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ferqa di neqeba (têkiliya) heram û (nîkâha) helal, lêdana erbanê û dengê sitiranê ye. (Yanî eşkerekirin e.)"*

(T1088 Tirmizî, Nîkah, 6)



**738.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Vê nîkahê îlan bikin, ewê di (deverê ji herkesî re vekirî) mizgeftan de çêkin û tê de li erbanê bidin."*

(T1089 Tirmizî, Nîkah, 6)



**739.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dana welîmê (xwarina dawetê) roja ewil heq e. Dana wê roja duduyan edet e. Dana welîmê roja siseyê riyakari ye."*

(ÎM1915 Ibn Mace, Nîkah, 25)



٧٤٠- قَالَ عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ ﷺ : ...فَقَالَ لَهُ النَّبِيُّ ﷺ : "أَوْلِمْ وَلَوْ بِشَاةٍ."



٧٤١- عَنْ أَبِي مُوسَى عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "فُكُّوا الْعَانِيَ، وَأَجِيبُوا الدَّاعِيَ، وَعُودُوا الْمَرِيضَ."

# MEHREMIYETA AÎLÊ
## MEYDANA TEYBET

٧٤٢- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ سَعْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا سَعِيدٍ الْخُدْرِيَّ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنْ أَعْظَمِ الْأَمَانَةِ عِنْدَ اللَّهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، الرَّجُلَ يُفْضِي إِلَى امْرَأَتِهِ وَتُفْضِي إِلَيْهِ، ثُمَّ يَنْشُرُ سِرَّهَا."



٧٤٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِيَّاكُمْ وَالظَّنَّ فَإِنَّ الظَّنَّ أَكْذَبُ الْحَدِيثِ، وَلاَ تَحَسَّسُوا وَلاَ تَجَسَّسُوا، وَلاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَ تَدَابَرُوا، وَلاَ تَبَاغَضُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَانًا."



**740.** Ji Ebdurrehman bin Ewf (r.) hatiye ragihandin... Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Bi serjêkirina mihekî jî be welîmê bide."*

(B2048 Buxarî, Buyû', 1)



**741.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Esîran azad bikin, kesê we de'wet kir îcabet bikin, herin serdana nexweşî."*

(B5174 Buxarî, Nîkah, 72)

# MEHREMIYETA AÎLÊ
## MEYDANA TEYBET

**742.** Ebdurrehman bin Se'd (r.) gotiye: "Min ji Ebû Seîd el-Xudrî bihîst digot: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Yek ji xiyaneta herî mezin li cem Xwedê ku Roja Qiyametê (hesabê wê dipirse) ew e ku piştî mirovek têkiliyê bi hevsera xwe re kir sirrê wê eşkere bike ye.'"*

(M3543 Muslim, Nîkah, 124; D4870 Ebû Dawûd, Edeb, 32)



**743.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji zennê biparêzin. Lewra zen derewtirînê gotina ye (derew bixwe ye). Hûn bi dizî guh nedin şitexaliya hevdû, li eyb û kêmasîyên hevdû negerihin, bi hevdû re nekevin pêşbaziya mezinbûnê de, hesûdiya hevdû nekin, ji hevdû neenirin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira."*

(B6064 Buxarî, Edeb, 57; M6536 Muslim, Birr we sile, 28)



٧٤٤- عَنْ ثَوْبَانَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَحِلُّ لِامْرِئٍ أَنْ يَنْظُرَ فِى جَوْفِ بَيْتِ امْرِئٍ حَتَّى يَسْتَأْذِنَ، فَإِنْ نَظَرَ فَقَدْ دَخَلَ..."



٧٤٥- عَنْ أَبِى بَرْزَةَ الأَسْلَمِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ مَنْ آمَنَ بِلِسَانِهِ وَلَمْ يَدْخُلِ الإِيمَانُ قَلْبَهُ لاَ تَغْتَابُوا الْمُسْلِمِينَ وَلاَ تَتَّبِعُوا عَوْرَاتِهِمْ فَإِنَّهُ مَنِ اتَّبَعَ عَوْرَاتِهِمْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ وَمَنْ يَتَّبِعِ اللَّهُ عَوْرَتَهُ يَفْضَحْهُ فِى بَيْتِهِ."



٧٤٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "...وَمَنِ اسْتَمَعَ إِلَى حَدِيثِ قَوْمٍ وَهُمْ لَهُ كَارِهُونَ أَوْ يَفِرُّونَ مِنْهُ صُبَّ فِى أُذُنِهِ الآنُكُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ..."

# HEYATA TEYBETÎ YA DÎ NAVBERA JIN Û MÊRÊN HEV DE
## BIHEVREBÛNA HERÎ MEHREM

٧٤٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَوْ أَنَّ أَحَدَهُمْ، إِذَا أَرَادَ أَنْ يَأْتِيَ أَهْلَهُ، قَالَ: بِاسْمِ اللَّهِ، اللَّهُمَّ! جَنِّبْنَا الشَّيْطَانَ؛ وَجَنِّبِ الشَّيْطَانَ مَا رَزَقْتَنَا، فَإِنَّهُ، إِنْ يُقَدَّرْ بَيْنَهُمَا وَلَدٌ فِى ذَلِكَ، لَمْ يَضُرَّهُ شَيْطَانٌ أَبَدًا."



**744.** Ji Sewban (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne helal e ku mirovek bêizin li nava mala mirovekî meyze bike. Heke meyze bike, bêguman ew ketiyê de..."*

(T357 Tirmizî, Salat, 148; HM22779 Ibn Hanbel, V, 280)



**745.** Ji Ebû Berze el-Eslemî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî ew kesên bi devê xwe îman anîn, belê îman neketî dilê wan de! Xiybeta Misilmanan nekin û li qusûrê wan negerihin. Lewra kesê li qusûrê Misilmanan bigerihê wê Xwedê jî li qusûrê wî bigerihe û kesê ku Xwedê li qusûrê wî bigerihe wê wî di mala wî bi Xwedê jî be wê rezîl bike."*

(D4880 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



**746.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê guh bidêre şitexaliya komekî ku naxwazin ew kes bibihîze an jî xwe ji wî dûr têxin, wê Roja Qiyametê risas were rijandin di guhê wî de..."*

(B7042 Buxarî, Te'bîr, 45)

# HEYATA TEYBETÎ YA Dİ NAVBERA JIN Û MÊRÊN HEV DE

## BIHEVREBÛNA HERÎ MEHREM

**747.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema mirovekî xwest têkiliya cinsî bi jina xwe re bike bêje: 'Bismillah (bi navê Xwedê), Xwedayê min! Şeytên ji me dûrke û ji zaroka tu bêxê nesîbê me jî dûrke.' Vêca heke ji vê tikiliyê ji wan re zarokek hate teqdîr kirin, şeytan zererê nade wî zarokî."*

(M3533 Muslim, Nîkah, 116)



٧٤٨- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ سَعْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا سَعِيدٍ الْخُدْرِيَّ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنْ أَعْظَمِ الأَمَانَةِ عِنْدَ اللَّهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، الرَّجُلَ يُفْضِى إِلَى امْرَأَتِهِ وَتُفْضِى إِلَيْهِ، ثُمَّ يَنْشُرُ سِرَّهَا."



٧٤٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِى الَّذِى يَأْتِى امْرَأَتَهُ وَهِيَ حَائِضٌ قَالَ: "يَتَصَدَّقُ بِدِينَارٍ أَوْ نِصْفِ دِينَارٍ."



٧٥٠- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَتَى أَحَدُكُمْ أَهْلَهُ، ثُمَّ أَرَادَ أَنْ يَعُودَ، فَلْيَتَوَضَّأْ."

# ZAROK
## FÊKIYÊ HEZJÊKÎRIN Û ŞEFQETÊ

٧٥١- عَنْ أَبِى مُوسَى قَالَ: وُلِدَ لِى غُلاَمٌ، فَأَتَيْتُ بِهِ النَّبِيَّ ﷺ فَسَمَّاهُ إِبْرَاهِيمَ فَحَنَّكَهُ بِتَمْرَةٍ وَدَعَا لَهُ بِالْبَرَكَةِ وَدَفَعَهُ إِلَيَّ...



٧٥٢- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّكُمْ تُدْعَوْنَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِأَسْمَائِكُمْ وَأَسْمَاءِ آبَائِكُمْ فَأَحْسِنُوا أَسْمَاءَكُمْ."



**748.** Ebdurrehman bin Se'd (r.) gotiye: "Min ji Ebû Seîd el-Xudrî bihîst digot:' Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Yek ji xiyaneta herî mezin li cem Xwedê ku Roja Qiyametê (hesabê wê dipirse), ew e ku piştî mirovek têkiliyê bi xanima xwe re kir sirrê wê eşkere bike ye."*

(M3543 Muslim, Nîkah, 124)



**749.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê kesê di halê heydê de têkiliya cinsî bi jina xwe re dike de gotiye: *"Lazim e ew kes dînarek (4.25 gr. Zêr) an nîv dînarî sedeqe bide."*

(D264 Ebû Dawûd, Teharet, 105)



**750.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke yekî ji we têkiliya cinsî bi jina xwe re kir piştre xwest tekrar bike bila (di navbera herduyan de) destnimêj bigire."*

(M707 Muslim, Hayd, 27)

# ZAROK
## FÊKIYÊ HEZJÊKİRIN Û ŞEFQETÊ

**751.** Ebû Mûsa (r.) gotiye: "Kureke min çêbû. Min ew bire cem Resûlê Xwedê (s.) Navê wî kir Îbrahîm û xurmeyek perçiqand û nerm kir da devê wî. Piştre dua xêr û bereketê jê re kir û dirêjê min kir..."

(B6198 Buxarî, Edeb, 109)



**752.** Ji Ebu'd-Derda (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Roja Qiyametê hûnê bi navê xwe û bi navê bavê xwe werine gazî kirin. Vêca navê xweş (li zarokê xwe) bikin."*

(D4948 Ebû Dawûd, Edeb, 61)



٧٥٣- عَنْ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي رَافِعٍ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَذَّنَ فِي أُذُنِ الْحَسَنِ بْنِ عَلِيٍّ –حِينَ وَلَدَتْهُ فَاطِمَةُ– بِالصَّلَاةِ.



٧٥٤- حَدَّثَنَا سَلْمَانُ بْنُ عَامِرٍ الضَّبِّيُّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَعَ الْغُلَامِ عَقِيقَةٌ، فَأَهْرِيقُوا عَنْهُ دَمًا وَأَمِيطُوا عَنْهُ الأَذَى."



٧٥٥- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ قَالَ: عَقَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ الْحَسَنِ بِشَاةٍ وَقَالَ: "يَا فَاطِمَةُ احْلِقِي رَأْسَهُ وَتَصَدَّقِي بِزِنَةِ شَعْرِهِ فِضَّةً."

# NAVLÊKIRIN
## NAVLÊDAN

٧٥٦- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَحَبَّ أَسْمَائِكُمْ إِلَى اللَّهِ عَبْدُ اللَّهِ وَعَبْدُ الرَّحْمَنِ."



٧٥٧- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يُغَيِّرُ الِاسْمَ الْقَبِيحَ.



**753.** Ubeydullah bin Ebî Rafi' ji bavê xwe rîwayet kiriye ku gotî: "Dema Fatîme (r.) kurê Elî Hesen anî diyayê, min dît Resûlê Xwedê (s.) banga nimêjê di guhê wî de xwend."

(T1514 Tirmizî, Edahî, 16)



**754.** Selman bin 'Amir ed-Debbî (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê bihîst digot: *'Dema zarokek di welidê, ji bo wî eqîqeyek tê serjêkirin. Li ser navê wî eqîqeyekî serjê bikin û (bi kurkirina pora wî ) eziyetê jê dûr bikin."*

(B5472 Buxarî, Eqîqe, 2)



**755.** Elî bin Ebî Talib (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê eqîqeya Hesen bizinek ser jê kir û got: *'Ey Fatîme! Pora wî kur bike û bi giraniya mûyên wî zîv sedeqe bide.'"*

(T1519 Tirmizî, Edahî, 19)

# NAVLÊKİRİN
## NAVLÊDAN

**756.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Navên we yên ku Xwedê zehftir hez jê dike Ebdullah û Ebdurrehman e."*

(M5587 Muslim, Adab, 2)



**757.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Pêxember (s.) navên kirh yên nexweşik diguherandin."

(T2839 Tirmizî, Edeb, 66)



٧٥٨- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ أَمَرَ بِتَسْمِيَةِ الْمَوْلُودِ يَوْمَ سَابِعِهِ وَوَضْعِ الْأَذَى عَنْهُ وَالْعَقِّ.



٧٥٩- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّكُمْ تُدْعَوْنَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِأَسْمَائِكُمْ وَأَسْمَاءِ آبَائِكُمْ فَأَحْسِنُوا أَسْمَاءَكُمْ."

# HEQÊ ZAROKAN
## HEQÊ ZAROKAN JÎ HEYE

٧٦٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ...: "... أَيُّمَا رَجُلٍ جَحَدَ وَلَدَهُ وَهُوَ يَنْظُرُ إِلَيْهِ احْتَجَبَ اللَّهُ مِنْهُ وَفَضَحَهُ عَلَى رُءُوسِ الْأَوَّلِينَ وَالْآخِرِينَ."



٧٦١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيُّ الذَّنْبِ أَعْظَمُ؟ قَالَ: "أَنْ تَجْعَلَ لِلَّهِ نِدًّا وَهُوَ خَلَقَكَ"، قَالَ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: "أَنْ تَقْتُلَ وَلَدَكَ خَشْيَةَ أَنْ يَأْكُلَ مَعَكَ"، قَالَ: ثُمَّ أَيٌّ؟ قَالَ: "أَنْ تُزَانِىَ حَلِيلَةَ جَارِكَ."



**758.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê emir da ku zaroka ku Xwedê nûdayî, di roja heftan de nav lê were dayîn (bi por kurkirinê), were paqijkirin û eqîqe were dayîn.

(T2832 Tirmizî, Edeb, 63)



**759.** Ji Ebu'd-Derda (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Roja Qiyametê hûnê bi navê xwe û bi navê bavê xwe werine gazîkirin. Vêca navê xweş (li zarokê xwe) bikin."*

(D4948 Ebû Dawûd, Edeb, 61)

# HEQÊ ZAROKAN
## HEQÊ ZAROKAN JÎ HEYE

**760.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê zaroka xwe ya li ber çava înkar bike (bêje: ne ji min e), (Roja Qiyametê) wê Xwedê wî ji rehma xwe dûr bixe û di nav kesên hatî û derbas buyî de li cem herkesî rezîl bike."*

(D2263 Ebû Dawûd, Telaq, 28-29)



**761.** Ebdullah (bin Mesûd) (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *'Mezintirîn guneh li cem Xwedê kîjan e?'* Pêxember (s.) got: *'Ew e ku digel ewî tu afirandî, tu rabî ji Xwedê re şirîka bi hebînî.'* 'Piştre kîjan e?' got: *'Ew e ku ji tirsa ku wê bi te re xwarinê bixwe tu rabe ewladê xwe bikujî.'*, 'Piştre kîjan e?' got: *'Zînakirina bi jina cîranê xwe re ye.'"*

(B6001 Buxarî, Edeb, 20)



٧٦٢- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا قَالَتْ: دَخَلَتِ امْرَأَةٌ مَعَهَا ابْنَتَانِ لَهَا تَسْأَلُ، فَلَمْ تَجِدْ عِنْدِى شَيْئًا غَيْرَ تَمْرَةٍ فَأَعْطَيْتُهَا إِيَّاهَا، فَقَسَمَتْهَا بَيْنَ ابْنَتَيْهَا، وَلَمْ تَأْكُلْ مِنْهَا، ثُمَّ قَامَتْ فَخَرَجَتْ، فَدَخَلَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَيْنَا فَأَخْبَرْتُهُ، فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَنِ ابْتُلِيَ مِنْ هَذِهِ الْبَنَاتِ بِشَيْءٍ كُنَّ لَهُ سِتْرًا مِنَ النَّارِ."



٧٦٣- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَمْ يَرْحَمْ صَغِيرَنَا وَ[لَمْ] يَعْرِفْ شَرَفَ كَبِيرِنَا."



٧٦٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: وُجِدَتِ امْرَأَةٌ مَقْتُولَةٌ فِى بَعْضِ تِلْكَ الْمَغَازِى، فَنَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ قَتْلِ النِّسَاءِ وَالصِّبْيَانِ.



٧٦٥- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: تَصَدَّقَ عَلَيَّ أَبِى بِبَعْضِ مَالِهِ فَقَالَتْ أُمِّى عَمْرَةُ بِنْتُ رَوَاحَةَ: لاَ أَرْضَى حَتَّى تُشْهِدَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ، فَانْطَلَقَ أَبِى إِلَى النَّبِيِّ ﷺ لِيُشْهِدَهُ عَلَى صَدَقَتِى، فَقَالَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَفَعَلْتَ هَذَا بِوَلَدِكَ كُلِّهِمْ؟" قَالَ: لاَ، قَالَ: "اِتَّقُوا اللَّهَ وَاعْدِلُوا فِى أَوْلاَدِكُمْ" فَرَجَعَ أَبِى فَرَدَّ تِلْكَ الصَّدَقَةَ.

**762.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Pîrekek digel du qîzên xwe hat tiştin xwestin. Li cem min ji bilî xurmeyekî tişteka ku ez bidimê tune bû. Min xurme dayê. Ew xurme li herdû qîzên xwe leva kir û wê ji xurmê tiştek nexwar. Piştre rabû û çû. Li pey wê re Resûlê Xwedê (s.) hate cem me. Min jê re tiştên bûyî gotin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Kesê bi sebep [ji bo]qîzên xwe bikeve tengiyê, ew qîz wê jê re bibin sîper ji agirê cehnemê.'*"

(B1418 Buxarî, Zekat, 10)



**763.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûle Xwedê (s.) gotiye: *Kesê rehmê li piçûkên me neke û hurmeta mezinên me negire ew ne ji me ye."*

(T1920 Tirmizî, Birr we sile, 15)



**764.** Ibn Umer (r.) gotiye: "Di herbekî de jinekek kuştî hate dîtin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) men'a kuştina jin û zarokan kir."

(M4548 Muslim, Cîhad we siyer, 25)



**765.** Nu'man bin Beşîr (r.) dibêje: "Bavê min qismek ji serweta xwe bexşê min kir. Vêca dayîka min 'Emre bint Rewahe got: 'Heta Resûlê Xwedê nebe şahid ez (bi vê) ne razî me.' Bavê min ji bo ku Resûlê Xwedê bike şahidê malê ku bexşê min kirî çû cem wî. Resûlê Xwedê (s.) jê re got: *'Ma te ev ji zarokên xwe tevan re jî kiriye?'* got: 'Nexêr'. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ji Xwedê bitirsihin, di navbera zarokên xwe de edaletê bikin."* Li ser vê yekê bavê min zivirî û ew malê bexşê min kirî şûnde zivirand."

(M4181 Muslim, Hibe, 13)

# TERBIYA ZAROKAN
## HER ZAROKA KU TÊ DINYAYÊ LI SER FITRET TÊ DINYAYÊ

٧٦٦- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ مَوْلُودٍ إِلاَّ يُولَدُ عَلَى الْفِطْرَةِ، فَأَبَوَاهُ يُهَوِّدَانِهِ أَوْ يُنَصِّرَانِهِ أَوْ يُمَجِّسَانِهِ..."



٧٦٧- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ عَالَ ثَلاَثَ بَنَاتٍ، فَأَدَّبَهُنَّ وَزَوَّجَهُنَّ، وَأَحْسَنَ إِلَيْهِنَّ، فَلَهُ الْجَنَّةُ."



٧٦٨- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: قَبَّلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْحَسَنَ بْنَ عَلِيٍّ، وَعِنْدَهُ الأَقْرَعُ بْنُ حَابِسٍ التَّمِيمِيُّ جَالِسًا، فَقَالَ الأَقْرَعُ: إِنَّ لِي عَشَرَةً مِنَ الْوَلَدِ مَا قَبَّلْتُ مِنْهُمْ أَحَدًا، فَنَظَرَ إِلَيْهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ قَالَ: "مَنْ لاَ يَرْحَمُ لاَ يُرْحَمُ."



٧٦٩- عَنْ أَنَسٍ [بْنِ مَالِكٍ] قَالَ: خَدَمْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَشْرَ سِنِينَ، وَاللَّهِ! مَا قَالَ لِي: أُفًّا قَطُّ، وَلاَ قَالَ لِي لِشَيْءٍ: لِمَ فَعَلْتَ كَذَا؟ وَهَلاَّ فَعَلْتَ كَذَا؟



# TERBIYA ZAROKAN
## HER ZAROKA KU TÊ DINYAYÊ LI SER FITRET TÊ DINYAYÊ

**766.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her zarok li ser fitret tête dinyayê, vêca dê û bavê wî ewî an dikine cihû an fileh an jî Mecûsî..."*

(B4775 Buxarî, Tefsîr (Rûm), 2; M6755 Muslim, Qeder, 22)



**767.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê sê qîza xweyî bike, wan terbiye bike, wan bizewicîne û bi wan re xweşik miamele bike, jê re cennet heye."*

(D5147 Ebû Dawûd, Edeb, 120-121; HM11946 Ibn Hanbel, III, 96)



**768.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) (neviyê xwe) Hesen kurê Elî maç kir û el-Eqre' bin Habis et-Temîmî li cemê rûniştî bû. Vêca el-Eqre' got: 'Deh zarokên min hene, min yek ji wan maç nekiriye.' Resûlê Xwedê lê meyze kir û got: *'Kesê rehmê neke rehm lê nayê kirin.'*"

(B5997 Buxarî, Edeb, 18; M6028 Muslim, Feda'il, 65)



**769.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min deh sala xizmeta Resûlê Xwedê (s.) kir. Wellahî careke jî be ji min re negot: 'Of'. Ji bo tu tiştî ne gotiye min: '*Çima te wilo kir?*' an jî '*Te halo kiribaya!*'"

(M6011 Muslim, Feda'il, 51; B6038 Buxarî, Edeb, 39)



٧٧٠- حَدَّثَنَا أَيُّوبُ بْنُ مُوسَى عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا نَحَلَ وَالِدٌ وَلَدًا مِنْ نَحْلٍ أَفْضَلَ مِنْ أَدَبٍ حَسَنٍ."

# HUZÛRA AÎLEYÊ
## JI DÊL ŞIDDETÊ ŞEFQET

٧٧١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَكْمَلُ الْمُؤْمِنِينَ إِيمَانًا أَحْسَنُهُمْ خُلُقًا، وَخِيَارُكُمْ خِيَارُكُمْ لِنِسَائِهِمْ."



٧٧٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَفْرَكْ مُؤْمِنٌ مُؤْمِنَةً، إِنْ كَرِهَ مِنْهَا خُلُقًا رَضِيَ مِنْهَا آخَرَ."



٧٧٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَمْعَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَجْلِدْ أَحَدُكُمُ امْرَأَتَهُ جَلْدَ الْعَبْدِ ثُمَّ يُجَامِعُهَا فِى آخِرِ الْيَوْمِ."



٧٧٤- عَنْ خَالِدِ بْنِ الْوَلِيدِ، قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ أَشَدَّ النَّاسِ عَذَابًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ، أَشَدُّهُمْ عَذَابًا لِلنَّاسِ فِي الدُّنْيَا."



**770.** Eyyûb bin Mûsa (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu bavî ji terbiya baş çêtir tu hediye ne daye zaroka xwe."*

(T1952 Tirmizî, Birr we sile, 33; HM16830 Ibn Hanbel, IV, 77)

# HUZÛRA AÎLEYÊ
## JI DÊL ŞIDDETÊ ŞEFQET

**771.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji cîhet îmanê ve mukemmeltirê muminan, exlaqxweştirê wa ye. Qenctirê we ew kes e, yê ku ji pîrekên xwe re qenctir e."*

(T1162 Tirmizî, Rada', 11)



**772.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila mêrê mumin ji jina xwe ya mumin nefret neke. Lewra heke hez ji xuyek wê neke wê hez ji xuyên wê yên dîtir bike."*

(M3645 Muslim, Rada', 61)



**773.** Ji Ebdullah bin Zem'e (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes ji we mîna ku li ebdan dixe li xanima xwe nexe. Piştre dawiya rojê wê bi çi rûyî (di nivîna de) pêre têkiliyê bike!"*

(B5204 Buxarî, Nîkah, 94)



**774.** Ji Xalid bin el-Welîd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ezabgirantirê mirovan Roja Qiyametê, ew e yê ku di dinyayê de zehftir, însan îşkence dikirin."*

(TM1253 Tayalîsî, Musned, II, 11; HM16943 Ibn Hanbel, IV, 90)



٧٧٥- عَنْ أَنَسٍ [بْنِ مَالِكٍ] قَالَ: خَدَمْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَشْرَ سِنِينَ، وَاللَّهِ! مَا قَالَ لِي: أُفًّا قَطُّ، وَلاَ قَالَ لِي لِشَيْءٍ: لِمَ فَعَلْتَ كَذَا؟ وَهَلاَّ فَعَلْتَ كَذَا؟

# BERDAN
## JI HEV VEQETANDIN

٧٧٦- عَنِ ابْنِ عُمَرَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "أَبْغَضُ الْحَلاَلِ إِلَى اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ الطَّلاَقُ."



٧٧٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "لَيْسَ مِنَّا مَنْ خَبَّبَ امْرَأَةً عَلَى زَوْجِهَا..."



٧٧٨- عَنْ ثَوْبَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "أَيُّمَا امْرَأَةٍ سَأَلَتْ زَوْجَهَا طَلاَقًا فِي غَيْرِ مَا بَأْسٍ فَحَرَامٌ عَلَيْهَا رَائِحَةُ الْجَنَّةِ."



٧٧٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "لاَ يَفْرَكْ مُؤْمِنٌ مُؤْمِنَةً، إِنْ كَرِهَ مِنْهَا خُلُقًا رَضِيَ مِنْهَا آخَرَ."

**775.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min deh sala xizmeta Resûlê Xwedê (s.) kir. Wellahî careke jî be ji min re negot: 'Of'. Ji bo tu tiştî ne gotiye min: 'Çima te wilo kir?' anjî 'Te halo kiribaya!'"

(M6011 Muslim, Feda'il, 51)

# BERDAN
## JI HEV VEQETANDIN

**776.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li cem Xwedê tişta helal a ku jê buxz dike berdan e."*

(D2178 Ebû Dawûd, Telaq, 3; İM2018 Ibn Maceh, Telaq, 1)



**777.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê jinê li mêrê wê xira bike ew ne ji me ye..."*

(D2175 Ebû Dawûd, Telaq, 1; HM23368 Ibn Hanbel, V, 353)



**778.** Ji Sewban (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi jina bê sebebek meqbûl daxwaza berdanê ji mêrê xwe bike, bêhna cennetê jê re heram e."*

(D2226 Ebû Dawûd, Telaq, 17-18)



**779.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila mêrê mumin ji jina xwe ya mumin nefret neke. Lewra heke hez ji xuyek wê neke wê hez ji xuyên wê yên dîtir bike."*

(M3645 Muslim, Rada', 61)

# DÊ Û BAV
## HERDU DERIYÊN CENNETÊ

٧٨٠- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ ﷺ أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ : أَيُّ الأَعْمَالِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "الصَّلاَةُ لِوَقْتِهَا، وَبِرُّ الْوَالِدَيْنِ، ثُمَّ الْجِهَادُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ" .



٧٨١- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ، عَنْ أَبِيهِ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَلاَ أُنَبِّئُكُمْ بِأَكْبَرِ الْكَبَائِرِ؟" -ثَلاَثاً- قُلْنَا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ، قَالَ: "الإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ."



٧٨٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "رِضَا الرَّبِّ فِى رِضَا الْوَالِدِ وَسَخَطُ الرَّبِّ فِى سَخَطِ الْوَالِدِ."



٧٨٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، مَنْ أَحَقُّ بِحُسْنِ صَحَابَتِى؟ قَالَ: "أُمُّكَ"، قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: "أُمُّكَ" قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: "أُمُّكَ" قَالَ: ثُمَّ مَنْ؟ قَالَ: "ثُمَّ أَبُوكَ."



# DÊ Û BAV
## HERDU DERIYÊN CENNETÊ

**780.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Zilamekî ji Resûlê Xwedê pirsî û got: 'Xêra kîjan emelî/îbadetî zêdetir e?" Resûlê Xwedê (s.) got: *'Nimêja di wextê xwe de tê kirin, qencîkirina li dê û bavan, piştre jî cîhadkirina di rêya Xwedê de ye."*

(B7534 Buxarî, Tewhîd, 48)



**781.** Ebdurrehman bin Ebî Bekrete (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *"Gelo mezintîrîn gunehê kebaîr çi ye ji we re bêjim?"* Me got: "Belê kerem ke ya Resûlê Xwedê!" Vêca Resûlê Xwedê got: *"Hebandina şirîkekî ji Xwedê re û nepêkanîna heqê dê û bavan (neheqiya li wan)"*

(B5976 Buxarî, Edeb, 6)



**782.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Razîbûna Xwedê bi razîbûna bav ve girêdayiye û enra Xwedê bi enra bav ve girêdayiye."*

(T1899 Tirmizî, Birr we sile, 3)



**783.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Zilamek hate cem Pêxember (s.) û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma kî zehftir layîqê baş pêrebûrîna min e?' Pêyxmber (s.) got: *'Dayîka te.'*, Zilamî got: 'Piştre kî?' Pêxember (s.) got: *'Dayîka te.'*, Zilamî got: 'Ma piştre kî?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Dayîka te.'*. Zilamî got: 'Ma piştre?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Piştre bavê te.'"*

(B5971 Buxarî, Edeb, 2)



٧٨٤- فقَالَ أَبُو الدَّرْدَاءِ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "الْوَالِدُ أَوْسَطُ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ، فَإِنْ شِئْتَ فَأَضِعْ ذَلِكَ الْبَابَ أَوِ احْفَظْهُ."

# SILEÊ REHMÊ
## HEQÊN EQREBATIYÊ/LI EQREBEYAN XWEDÎ DERKETIN

٧٨٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الرَّاحِمُونَ يَرْحَمُهُمُ الرَّحْمَنُ ارْحَمُوا مَنْ فِى الأَرْضِ يَرْحَمْكُمْ مَنْ فِى السَّمَاءِ، الرَّحِمُ شِجْنَةٌ مِنَ الرَّحْمَنِ فَمَنْ وَصَلَهَا وَصَلَهُ اللَّهُ وَمَنْ قَطَعَهَا قَطَعَهُ اللَّهُ."



٧٨٦- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ عَوْفٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: أَنَا الرَّحْمَنُ وَهِيَ الرَّحِمُ شَقَقْتُ لَهَا اسْمًا مِنِ اسْمِى، مَنْ وَصَلَهَا وَصَلْتُهُ وَمَنْ قَطَعَهَا بَتَتُّهُ."



٧٨٧- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْخَالَةُ بِمَنْزِلَةِ الأُمِّ."



**784.** Ebu'd-Derda (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Bav, di nav deriyên cennetê de deriyê nîvî ye. Vêca te bivê wî deriyê winda bike û te bivê muhafeze bike.'"*

(T1900 Tirmizî, Birr we sile, 3)

# SILEÊ REHMÊ
## HEQÊN EQREBATIYÊ/LI EQREBEYAN XWEDÎ DERKETIN

**785.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê (ku navek Wî) er-Rehman e, rehmê li merhemetkera dike. Vêca hûn rehmê li yên li ser erdê bikin, wê Yê li asîmana rehmê li we bike. 'Rehm' rayekê er-Rehman'e. Kesê têkiliya xwe bi eqrebayetiyê ve dewam bike wê Xwedê jî têkiliya xwe bi wî kesî re dewam bike û kesê eleqa xwe ji eqrebatiyê qut bike wê Xwedê jî eleqa xwe ji wî kesî qut bike."*

(T1924 Tirmizî, Birr we sile, 16)



**786.** Ebdurrehman bin 'Ewf (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Xwedê Teala gotiye: 'Ez er-Rehman im û ew (têkiliyên eqrebatiyê) rehim e. Min navek ku ji koka navê min çêbûyî peyda kir. Kesê pê re tikiliya xwe dewam bike ez ê jî têkiliya xwe pê re dewam bikim û kesê têkiliya xwe jê bibire ez ê jî têkiliya xwe jê bibirim.'"*

(D1694 Ebû Dawûd, Zekat, 45; HM1687 Ibn Hanbel, I, 195)



**787.** Ji el-Berra bin 'Azib (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xaltîk di cihê dayîkê de ye."*

(T1904 Tirmizî, Birr we sile, 6)



٧٨٨- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ سَرَّهُ أَنْ يُبْسَطَ عَلَيْهِ رِزْقُهُ، أَوْ يُنْسَأَ فِى أَثَرِهِ، فَلْيَصِلْ رَحِمَهُ."

٧٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَصِلْ رَحِمَهُ..."

٧٩٠- عَنْ مُحَمَّدِ بْنِ جُبَيْرِ بْنِ مُطْعِمٍ عَنْ أَبِيهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ قَاطِعٌ."

# EQREBATIYA BI ŞÎR

## EQREBATIYA BI SEBEB ŞÎRMIJANDINÊ ÇÊDIBE

٧٩١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ [لِى] رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "يَحْرُمُ مِنَ الرَّضَاعَةِ مَا يَحْرُمُ مِنَ الْوِلاَدَةِ."

٧٩٢- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ ... قَالَ: "انْظُرْنَ [مَنْ] أَخَوَاتُكُنَّ فَإِنَّمَا الرَّضَاعَةُ مِنَ الْمَجَاعَةِ."

**788.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê bixwaze ku rizqê wî jê re fereh bibe an jî umrê wî dirêj bibe, bila têkiliya bi eqrebayê xwe ve dewam bike."*

(M6523 Muslim, Birr we sile, 20; B5986 Buxarî, Edeb, 12)



**789.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila îkrama mêhvanê xwe bike. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila cîranê xwe aciz neke. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila an (tiştê) xêrê bêje an jî bila neştexilê."*

(D5154 Ebû Dawûd, Edeb, 122, 123) (B6138 Buxarî, Edeb, 85)



**790.** Muhemmed bin Cubeyr bin Mut'im ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ku têkiliyên eqrebatiyê qut bike naçe cennetê."*

(M6521 Muslim, Birr, 19, B5984 Buxarî, Edeb, 11)

# EQREBATIYA BI ŞÎR
## EQREBATIYA BI SEBEB ŞÎRMIJANDINÊ ÇÊDIBE

**791.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Çi zewaca bi eqrabatiya welidandinê (xuh û biratî) heram dibe, bi eqrebatiya şîrmijandinê jî heram dibe.'*"

(M3569 Muslim, Rada', 2)



**792.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Binêrin ka şîrbira û şîrxuhê we kî ne! Lewra ew şîrmijandin (a ku zewacê heram dike) bi sebeb birçîbûnê ye."*

(B5102 Buxarî, Nîkah, 22)



٧٩٣- عَنْ حَجَّاجِ بْنِ حَجَّاجٍ الأَسْلَمِيِّ، عَنْ أَبِيهِ: أَنَّهُ سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا يُذْهِبُ عَنِّى مَذَمَّةَ الرَّضَاعِ؟ فَقَالَ: "غُرَّةٌ: عَبْدٌ أَوْ أَمَةٌ."



٧٩٤- أَنَّ عُمَرَ بْنَ السَّائِبِ حَدَّثَهُ أَنَّهُ بَلَغَهُ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ جَالِسًا يَوْمًا، فَأَقْبَلَ أَبُوهُ مِنَ الرَّضَاعَةِ، فَوَضَعَ لَهُ بَعْضَ ثَوْبِهِ فَقَعَدَ عَلَيْهِ، ثُمَّ أَقْبَلَتْ أُمُّهُ فَوَضَعَ لَهَا شِقَّ ثَوْبِهِ مِنْ جَانِبِهِ الْآخَرِ فَجَلَسَتْ عَلَيْهِ، ثُمَّ أَقْبَلَ أَخُوهُ مِنَ الرَّضَاعَةِ، فَقَامَ لَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَأَجْلَسَهُ بَيْنَ يَدَيْهِ.

# JIN
## KESA BIRÊZ

٧٩٥- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "حُبِّبَ إِلَيَّ النِّسَاءُ وَالطِّيبُ وَجُعِلَتْ قُرَّةُ عَيْنِى فِى الصَّلَاةِ."



٧٩٦- عَنْ سَعِيدِ بْنِ حَكِيمِ بْنِ مُعَاوِيَةَ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ مُعَاوِيَةَ الْقُشَيْرِيِّ قَالَ: أَتَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ، قَالَ: فَقُلْتُ: مَا تَقُولُ فِى نِسَائِنَا؟ قَالَ: "أَطْعِمُوهُنَّ مِمَّا تَأْكُلُونَ، وَاكْسُوهُنَّ مِمَّا تَكْتَسُونَ، وَلاَ تَضْرِبُوهُنَّ وَلاَ تُقَبِّحُوهُنَّ."



**793.** Ji Heccac bin Heccac (r.) hatiye ragihandin ku bavê wî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsiye: "Ya Resûlê Xwedê! Ezê heqê (dayîka xwe ya şîr) çewa bidim?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bi (dayîna) koleyekî an cariyeyekî."*

(T1153 Tirmizî, Rada', 6; N3331 Nesaî, Nîkah, 56)



**794.** Umer bin es-Saîb hadîseyeke ku jê re hatî rîwayetkirin wiha neql dike: "Rojekî Resûlê Xwedê (s.) rûniştîbû, bavê wî yê şîr hate cemê. Vêca Resûlê Xwedê (s.) qetek cilê xwe jê re raêxist. Ew jî li ser rûnişt. Piştre dayîka wî ya şîr hat, vê carê qeta cilê xwe yê dîtir jê re raêxist. Ew jî li ser rûnişt. Piştre şîrbirayê wî hat, Resûlê Xwedê pêşberê wî de rabû û ew li pêşiya xwe rûniştand."

(D5145 Ebû Dawûd, Edeb, 119-120)

# JIN
## KESA BIRÊZ

**795.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Ji nimetên dinyayê) pîrek û bêhna miskê li min xweş tê. Nimêj jî, ji min re bûye roniya çavan."*

(N3392 Nesaî, Işretu'n-nisa', 1)



**796.** Seîd bin Hekîm bin Muawiye bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe Muawiye el-Quşeyrî ragihandiye ku gotiye: "Ez çûme cem Resûlê Xwedê (s.) û min jê re got: 'Tu di derheqê xanimê me de çi dibêjî?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Hûn çi bixwin wê bi wan bidine xwarin, hûn çi li xwe bikin wê li wan bikin, û li wan nexin û zema wan nekin.'*"

(D2144 Ebû Dawûd, Nîkah, 40-41)



٧٩٧- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرِو بْنِ الأَحْوَصِ قَالَ حَدَّثَنِى أَبِى أَنَّهُ شَهِدَ حَجَّةَ الْوَدَاعِ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ... فَقَالَ: "...أَلاَ إِنَّ لَكُمْ عَلَى نِسَائِكُمْ حَقًّا، وَلِنِسَائِكُمْ عَلَيْكُمْ حَقًّا..."



٧٩٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...خِيَارُكُمْ خِيَارُكُمْ لِنِسَائِهِمْ."



٧٩٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الدُّنْيَا مَتَاعٌ وَخَيْرُ مَتَاعِ الدُّنْيَا الْمَرْأَةُ الصَّالِحَةُ."



٨٠٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...أَلاَ أُخْبِرُكَ بِخَيْرِ مَا يَكْنِزُ الْمَرْءُ؟ الْمَرْأَةُ الصَّالِحَةُ؛ إِذَا نَظَرَ إِلَيْهَا سَرَّتْهُ وَإِذَا أَمَرَهَا أَطَاعَتْهُ وَإِذَا غَابَ عَنْهَا حَفِظَتْهُ."

**797.** Ji Suleyman bin 'Emr bin el-Ehwes (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Bavê min ji min re got: 'Ez bi Resûlê Xwedê re hazirê Heccetu'l-Weda'ê bûm... Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: "... *Bizanin, bêşik heqê we li ser jinên we heye û heqên wan jî li ser we heye. ..*""

(T1163 Tirmizî, Rada', 11)



**798.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Qenctirê we ew kes e ku ji pîrekên xwe re qenctir e.*"

(T1162 Tirmizî, Rada', 11; İM1978 Ibn Maceh, Nîkah, 50)



**799.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Dinya nîmet e. Bihatir nîmetê dinyayê pîreka qenc e.*"

(M3649 Muslim, Rada', 64)



**800.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) (ji Hz. Umer re) wiha gotiye: "*Ma xêrtirê xizîneya ku mirov bi dest dike çiye ji te re bejim? Ew jin e ku dema (mêrê wê) li rûyê wê meyze dike huzûrê peyda dike, dema tiştek jê xwest pêk tîne û dema mêrê wê ji malê winda bû hurmet û rêza wî diparêze.*"

(D1664 Ebû Dawûd, Zekat, 32)

# JIN
## DI NAVA JIYANÊ DE

٨٠١- عَنْ أُمَيْمَةَ بِنْتِ رُقَيْقَةَ أَنَّهَا قَالَتْ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فِى نِسْوَةٍ مِنَ الأَنْصَارِ نُبَايِعُهُ فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ! نُبَايِعُكَ عَلَى أَنْ لاَ نُشْرِكَ بِاللَّهِ شَيْئًا، وَلاَ نَسْرِقَ، وَلاَ نَزْنِيَ، وَلاَ نَأْتِيَ بِبُهْتَانٍ نَفْتَرِيهِ بَيْنَ أَيْدِينَا وَأَرْجُلِنَا، وَلاَ نَعْصِيَكَ فِى مَعْرُوفٍ...



٨٠٢- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَمْنَعُوا إِمَاءَ اللَّهِ مَسَاجِدَ اللَّهِ."



٨٠٣- عَنْ أُمِّ عَطِيَّةَ قَالَتْ: أَمَرَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ، أَنْ نُخْرِجَهُنَّ فِى الْفِطْرِ وَالأَضْحَى، الْعَوَاتِقَ وَالْحُيَّضَ وَذَوَاتِ الْخُدُورِ، فَأَمَّا الْحُيَّضُ فَيَعْتَزِلْنَ الصَّلاَةَ وَيَشْهَدْنَ الْخَيْرَ وَدَعْوَةَ الْمُسْلِمِينَ...



٨٠٤- عَنْ أُمِّ عَطِيَّةَ الأَنْصَارِيَّةِ قَالَتْ: غَزَوْتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ سَبْعَ غَزَوَاتٍ، أَخْلُفُهُمْ فِي رِحَالِهِمْ، فَأَصْنَعُ لَهُمُ الطَّعَامَ، وَأُدَاوِي الْجَرْحَى، وَأَقُومُ عَلَى الْمَرْضَى.

# JIN
## DI NAVA JIYANÊ DE

**801.** Umeyme bint Ruqeyqe (r.) gotiye: "Ez digel çend pîrekên Ensarî çûme cem Pêxember (s.) ku bey'eta wî bikin. Vêca me got: 'Ya Resûlê Xwedê! Em li ser ku tu şirîka ji Xwedê re çênekin, diziyê nekin, zînayê nekin, tu kesî bi iftîrayeke me bixwe li hev anî suçdar nekin û di emr û fermanên dîn de bêemriya te nekin bey'eta te dikin..."

(N4186 Nesaî, Bey'et, 18)



**802.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Men'a ebdên Xwedê yên jin ji mizgeftan nekin."*

(M990 Muslim, Salat, 136)



**803.** Ummu 'Etiyye (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) emrê me kir ku em di Eyda Remezanê û Eyda Qurbanê de qîzên ciwan, pîrekên di heyzê de û pîrekên di kuşeyeka mala xwe de rûniştî bênin cihê nimêjê. Belê pîrekên di heyzê de ne, wê ji nimêjê xwe bidine aliyekî û wê hazirê xêra vê meclisê û duayên Misilmanan bibin..."

(M2056 Muslim, Salatu'l-'Îdeyn, 12)



**804.** Ummu 'Etiyye el-Ensariyye (r.) gotiye: "Ez digel Resûlê Xwedê (s.) beşdarê heft herban bûm. Dimam ber bar û tiştên eskeran, min ji wan re xwarin çêdikir, min birîndar derman dikirin û xizmeta nexweşan dikir."

(M4690 Muslim, Cîhad we siyer, 142)

# JIN
## ILIM, LI SER HER MISILMANÎ FERZ E, PERWERDEHÎ HEQÊ WÊ YE JÎ

٨٠٥- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: جَاءَتِ امْرَأَةٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! ذَهَبَ الرِّجَالُ بِحَدِيثِكَ، فَاجْعَلْ لَنَا مِنْ نَفْسِكَ يَوْمًا نَأْتِيكَ فِيهِ، تُعَلِّمُنَا مِمَّا عَلَّمَكَ اللَّهُ، قَالَ: "اجْتَمِعْنَ يَوْمَ كَذَا وَكَذَا." فَاجْتَمَعْنَ، فَأَتَاهُنَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَعَلَّمَهُنَّ مِمَّا عَلَّمَهُ اللَّهُ...



٨٠٦- عَنْ عَائِشَةَ... فَقَالَتْ عَائِشَةُ: نِعْمَ النِّسَاءُ نِسَاءُ الأَنْصَارِ! لَمْ يَكُنْ يَمْنَعُهُنَّ الْحَيَاءُ أَنْ يَتَفَقَّهْنَ فِى الدِّينِ.



٨٠٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَمْنَعُوا إِمَاءَ اللَّهِ مَسَاجِدَ اللَّهِ."



٨٠٨- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: خَرَجَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ عِيدٍ فَصَلَّى رَكْعَتَيْنِ لَمْ يُصَلِّ قَبْلُ وَلاَ بَعْدُ، ثُمَّ مَالَ عَلَى النِّسَاءِ، وَمَعَهُ بِلاَلٌ، فَوَعَظَهُنَّ وَأَمَرَهُنَّ أَنْ يَتَصَدَّقْنَ، فَجَعَلَتِ الْمَرْأَةُ تُلْقِى الْقُلْبَ وَالْخُرْصَ.



# JIN
# ILIM, LI SER HER MISILMANÎ FERZ E, PERWERDEHÎ HEQÊ WÊ YE JÎ

**805.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "Pîrekek hate cem Resûlê Xwedê (s.) û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ji sohbeta te hima zilam feydê dibînin. Ji me re jî rojekî texsîs bike da em werin ba te ku tu me hînê tişta ku Xwedê hînê te kirî, bikî.' Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *'Filan û filan rojê li hev bicivin'* Vêca pîrek li hev civiyan. Resûlê Xwedê jî çû cem wan û ew hînê tişta ku Xwedê hînê wî kirî, kirin..."

(M6699 Muslim, Birr we sile, 152)



**806.** Hz. Aîşe (r.) ... gotiye: "Jinên Ensarî çi jinên baş in! Fihêtî ne dibû maniê ku hînê dîn bibin."

(M750 Muslim, Heyz, 61)



**807.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Men'a ebdên Xwedê yên jin ji mizgeftan nekin."*

(M990 Muslim, Salat, 136)



**808.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) roja eydê derkete cihê nimêjê. Du riket nimêj (bi Misilmanan re) kir û ne piştî van du riketa û ne jî piştî wan tu nimêjên dîtir nekir. Piştre digel Bîlal berê xwe da cihê ku pîrek lê ne. Vêca we'z û şîret li wan kir û emrê wan bi sedeqe dayînê kir. Li ser vê yekê pîrekan bazin û gihar avêtin (dewa Bîlal de)"

(B1431 Buxarî, Zekat, 21)



٨٠٩- عَنْ أَبِي مُوسَى الْأَشْعَرِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَدَّبَ الرَّجُلُ أَمَتَهُ فَأَحْسَنَ تَأْدِيبَهَا، وَعَلَّمَهَا فَأَحْسَنَ تَعْلِيمَهَا فَأَحْسَنَ تَعْلِيمَهَا ثُمَّ أَعْتَقَهَا فَتَزَوَّجَهَا كَانَ لَهُ أَجْرَانِ..."

# MEHREMIYETA BEDENÊ
## HURMETA ÎNSANÎ

٨١٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَعَنَ اللَّهُ الْوَاصِلَةَ وَالْمُسْتَوْصِلَةَ وَالْوَاشِمَةَ وَالْمُسْتَوْشِمَةَ."



٨١١- عَنْ يَعْلَى: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رَأَى رَجُلاً يَغْتَسِلُ بِالْبَرَازِ، فَصَعِدَ الْمِنْبَرَ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ وَقَالَ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حَلِيمٌ حَيِيٌّ سِتِّيرٌ يُحِبُّ الْحَيَاءَ وَالسَّتْرَ، فَإِذَا اغْتَسَلَ أَحَدُكُمْ فَلْيَسْتَتِرْ."



٨١٢- عَنِ الْمِسْوَرِ بْنِ مَخْرَمَةَ قَالَ: أَقْبَلْتُ بِحَجَرٍ أَحْمِلُهُ ثَقِيلٍ وَعَلَيَّ إِزَارٌ خَفِيفٌ -قَالَ- فَانْحَلَّ إِزَارِي وَمَعِيَ الْحَجَرُ لَمْ أَسْتَطِعْ أَنْ أَضَعَهُ حَتَّى بَلَغْتُ بِهِ إِلَى مَوْضِعِهِ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ارْجِعْ إِلَى ثَوْبِكَ فَخُذْهُ وَلاَ تَمْشُوا عُرَاةً."



**809.** Ji Ebû Mûsa el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi zilamê ku cariya xwe baş terbiye bike û wê baş perwerde bike, piştre jî wê azad bike û pê re bizewice, jê re du xêr hene..."*

(B3446 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)

# MEHREMIYETA BEDENÊ
## HURMETA ÎNSANÎ

**810.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê, ew pîreka porê bi pora xwe ve dike û ewa vî karî dike, û ew pîreka deqa li xwe dide û ya vî karî dike ji rehma xwe dûr xistiye."*

(B5937 Buxarî, Lîbas, 83)



**811.** Ji Ye'la (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) zilameke ku serê xwe li deverek vekirî de dişuşt, dît. (Bi lez) hilkete minberê, hemd û senayê Xwedê kir û got: *"Bêguman Xwedê Ezze we Celle helîm e, jixwefihêt e, tiştê eyb û qusûra dinixumîne û hez ji heyayê û ji nixumandinê dike. Vêca dema yekî ji we (xwest) serê xwe bişû bila xwe di deverek de ku kes wî nebîne bişû."*

(N406 Nesaî, Xusul we teyemmum, 7)



**812.** Mîswer bin Mexreme (r.) gotiye: "Rojekê min kevirek hilgirtibû û li ser min pêştmaleke sivik hebû. Vêca hêj kevir di destê min de bû pêştmala min ket û heta min ew kevir negihande cihê wî min nekarî ez deynim. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Vegere cila xwe bigire û tazî negerihin."*

(M773 Muslim, Heyz, 78)



٨١٣- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا قَالَتْ: يَرْحَمُ اللَّهُ نِسَاءَ الْمُهَاجِرَاتِ الأُوَلَ، لَمَّا أَنْزَلَ اللَّهُ ﴿وَلْيَضْرِبْنَ بِخُمُرِهِنَّ عَلَى جُيُوبِهِنَّ﴾ شَقَّقْنَ مُرُوطَهُنَّ فَاخْتَمَرْنَ بِهِ.



٨١٤- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ، عَنْ أَبِيهِ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ صَلَّى اللَّهُ عَلَيْهِ وَسَلَّمَ قَالَ: "لاَ يَنْظُرُ الرَّجُلُ إِلَى عَوْرَةِ الرَّجُلِ وَلاَ الْمَرْأَةُ إِلَى عَوْرَةِ الْمَرْأَةِ، وَلاَ يُفْضِى الرَّجُلُ إِلَى الرَّجُلِ فِى ثَوْبٍ وَاحِدٍ، وَلاَ تُفْضِى الْمَرْأَةُ إِلَى الْمَرْأَةِ فِى الثَّوْبِ الْوَاحِدِ."

## SEQETÎ
## IMTÎHANA GIRAN YA MUKAFATA WÊ CENNET E

٨١٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ صَلَّى اللَّهُ عَلَيْهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: "إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَالَ: إِذَا ابْتَلَيْتُ عَبْدِى بِحَبِيبَتَيْهِ فَصَبَرَ عَوَّضْتُهُ مِنْهُمَا الْجَنَّةَ."



٨١٦- عَنْ أَبِي ذَرٍّ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ، ذَهَبَ الْأَغْنِيَاءُ بِالْأَجْرِ يُصَلُّونَ وَيَصُومُونَ وَيَحُجُّونَ. قَالَ: "وَأَنْتُمْ تُصَلُّونَ وَتَصُومُونَ وَتَحُجُّونَ." قُلْتُ: يَتَصَدَّقُونَ وَلَا نَتَصَدَّقُ. قَالَ: "وَأَنْتَ فِيكَ صَدَقَةٌ، رَفْعُكَ الْعَظْمَ عَنِ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ، وَهِدَايَتُكَ الطَّرِيقَ صَدَقَةٌ، وَعَوْنُكَ الضَّعِيفَ بِفَضْلِ قُوَّتِكَ صَدَقَةٌ، وَبَيَانُكَ عَنِ الْأَرْثَمِ صَدَقَةٌ..."



**813.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: *"Xwedê rehma xwe li jinên mihacirên ewil bike. Dema Xwedê ayeta 'Bila kemkên xwe bi ser gerdena xwe re berdin.'* (Nûr, 24/31) *nazil kir (kenarê) çarika xwe qetandin û pê serê xwe nixumandin."*

(B4758 Buxarî, Tefsîr (Nûr), 12)



**814.** Ebdurrehman bin Ebî Seîd el-Xudrî (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila mêr li ewretê mêran û jin jî li ewretê jinan meyze nekin. Zilam bi zilamî re û pîrek bi pîrekê re tazî nekevin bin cilekî de."*

(M768 Muslim, Heyz, 74; D4018 Ebû Dawûd, Hammam, 2)

# SEQETÎ
## IMTÎHANA GIRAN YA MUKAFATA WÊ CENNET E

**815.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Xwedê Teala gotiye: 'Dema min ebdê xwe bi xoşewistên wî (çavên wî) îmtîhan kir û ewî jî sebir kir, ji dêl wan ve ez ê cennetê bidimê.'"*

(B5653 Buxarî, Merda, 7)



**816.** Ebû Zer (r.) gotiye: "Min got: Ya Resûlê Xwedê! Dewlemendan xêr hemî birin! Nimêj dikin, rojî digirin û heccê pêktînin!" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Hûn jî nimêj dikin, rojî digirin û heccê pêktînin"* Min got: "Belê ew sedeqa didin lê em nadin." Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Tu jî karî sedeqa bidî. Tu hestiyekî ji rê rakî dûr bêxî sedeqe ye, tu rê nîşanê (yekê kor an jî yê dipirsê) bidî sedeqe ye, tu bi qeweta xwe alîkariya yekê zeîf bikî sedeqe ye û tu ji dêl kesê lal meqseda wî bidî fêhmê sedeqe ye..."*

(HM21691 Ibn Hanbel, V, 152)



٨١٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لاَ يَنْظُرُ إِلَى صُوَرِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ، وَلَكِنْ يَنْظُرُ إِلَى قُلُوبِكُمْ وَأَعْمَالِكُمْ."



٨١٨- [أَنَّ] عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا زَوْجَ النَّبِيِّ ﷺ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ مُصِيبَةٍ تُصِيبُ الْمُسْلِمَ إِلاَّ كَفَّرَ اللَّهُ بِهَا عَنْهُ حَتَّى الشَّوْكَةِ يُشَاكُهَا."

# PÎRÎTÎ
## ERZELU'L-UMUR

٨١٩- عَنْ مُطَرِّفِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الشِّخِّيرِ، عَنْ أَبِيهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مُثِّلَ ابْنُ آدَمَ وَإِلَى جَنْبِهِ تِسْعٌ وَتِسْعُونَ مَنِيَّةً، إِنْ أَخْطَأَتْهُ الْمَنَايَا وَقَعَ فِي الْهَرَمِ حَتَّى يَمُوتَ."



٨٢٠- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَدْعُو بِهَؤُلاَءِ الدَّعَوَاتِ: "اَللَّهُمَّ! إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْبُخْلِ وَالْكَسَلِ وَأَرْذَلِ الْعُمُرِ، وَعَذَابِ الْقَبْرِ، وَفِتْنَةِ الْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ."



٨٢١- عَنْ عَمْرِو بْنِ عَبَسَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ شَابَ شَيْبَةً فِي سَبِيلِ اللَّهِ كَانَتْ لَهُ نُورًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



**817.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Bêguman Xwedê li şiklê we û li malê we meyze nake. Belê li qelbê we û li emelên we meyze dike.”*

(M6543 Muslim, Birr we sile, 34)



**818.** Ji xanima Pêxember Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Çi musîbeta were serê Misilmanekî ku sitiryek be jî ya ku di laşê wî re çûbe, mitleqa wê Xwedê bixe kefaretê gunehên wî.”*

(B5640 Buxarî, Merda, 1)

# PÎRÎTÎ
## ERZELU'L-UMUR

**819.** Muterrif bin Ebdillah bin eş-Şixxîr (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Mirov, digel not û neh tehlûkê mirinê yê ku hawîrdorê wî girtîn ve hatiyê heyînê; Heke van tehlûka tevan derbas bike jî wê pîr be û di netîcê de wê bimire.”*

(T2150 Tirmizî, Qeder, 14)



**820.** Enes (bin Malik) (r.) gotiye: “Resûlê Xwedê ev dua dikir: *‘Xwedayê min! Ez xwe dispêrime Te ji kunujiyê, ji tiraliyê, ji pîrîtiya ku dixe rezîliyê, ji ezabê qebrê û ji fitna heyat û mirinê.’*”

(M6876 Muslim, Zikir, dua, tewbe we îstîxfar, 52)



**821.** Ji 'Emr bin Ebese (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Kesê por an riha xwe di rêya Xwedê de sipî bike, wê ew sipîbûn Roja Qiyametê jê re bibe nûr.”*

(T1635 Tirmizî, Feda'ilu'l-Cîhad, 9)



٨٢٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا أَكْرَمَ شَابٌّ شَيْخًا لِسِنِّهِ إِلاَّ قَيَّضَ اللَّهُ لَهُ مَنْ يُكْرِمُهُ عِنْدَ سِنِّهِ."



٨٢٣- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَمْ يَرْحَمْ صَغِيرَنَا وَ[لَمْ] يَعْرِفْ شَرَفَ كَبِيرِنَا."

# SÊWÎ
## EMANETA HERÎ GIRAN YA DISTOYÊ CIVAKÊ DE

٨٢٤- عَنْ سَهْلٍ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا وَكَافِلُ الْيَتِيمِ فِى الْجَنَّةِ هَكَذَا." وَأَشَارَ بِالسَّبَّابَةِ وَالْوُسْطَى، وَفرَّجَ بَيْنَهُمَا شَيْئًا."



٨٢٥- عَنْ عَوْفِ بْنِ مَالِكٍ الأَشْجَعِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا وَامْرَأَةٌ سَفْعَاءُ الْخَدَّيْنِ كَهَاتَيْنِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ." وَأَوْمَأَ يَزِيدُ بِالْوُسْطَى وَالسَّبَّابَةِ. "امْرَأَةٌ آمَتْ مِنْ زَوْجِهَا ذَاتُ مَنْصِبٍ وَجَمَالٍ حَبَسَتْ نَفْسَهَا عَلَى يَتَامَاهَا حَتَّى بَانُوا أَوْ مَاتُوا."



**822.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi cuwanê ji ber umrê wî hurmeta pîrekalekî bigire, wê Xwedê, dema bigihe wî umrî kesên ku hurmeta wî bigirin jê re amade bike."*

(T2022 Tirmizî, Birr we sile, 75)



**823.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûle Xwedê (s.) gotiye: "*Kesê rehmê li piçûkên me neke û hurmeta mezinên me negire ew ne ji me ye.*"

(T1920 Tirmizî, Birr we sile, 15)

# SÊWÎ
## EMANETA HERÎ GIRAN YA DISTOYÊ CIVAKÊ DE

**824.** Ji Sehl (bin Se'd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez û kesê sêwiya xwedî dike di cennetê de (li tenişta) hev in."* Vêca Resûlê Xwedê (s.) navbera herdu tilîyên şehdê û ya nîvî hebikek vekir û bi wan îşaret kir, (yanî got: Wiha.)

(B5304 Buxarî, Telaq, 25)



**825.** Ji Ewf bin Malik el-Eşceî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez û ew pîreka (ji ber kul û derda bêguhdan mayî) lemka wê reş bûyî Roja Qiyametê weke van herdukan (tiliya îşaretê û ya navîn) nêzî hev in. Ew pîreka ku ji mêrê xwe bî maye û digel ku esîl û delale jî, xwe daye terbiyekirina sêwiyê xwe heta mezin bûne an jî mirin e."* Vêca rawiyê hedîsê jî (weke ku Pêxember (s.) îşaret kirî) tiliyên xwe ya îşaretê û ya navîn bi hev ve kirin û îşaret kir ango nêzî hev in.

(D5149 Ebû Dawûd, Edeb, 120, 121)



٨٢٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ قَبَضَ يَتِيمًا بَيْنَ الْمُسْلِمِينَ إِلَى طَعَامِهِ وَشَرَابِهِ أَدْخَلَهُ اللَّهُ الْجَنَّةَ الْبَتَّةَ إِلاَّ أَنْ يَعْمَلَ ذَنْبًا لاَ يُغْفَرُ [لَهُ]."



٨٢٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُ بَيْتٍ فِي الْمُسْلِمِينَ بَيْتٌ فِيهِ يَتِيمٌ يُحْسَنُ إِلَيْهِ. وَشَرُّ بَيْتٍ فِي الْمُسْلِمِينَ بَيْتٌ فِيهِ يَتِيمٌ يُسَاءُ إِلَيْهِ."



٨٢٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اَللَّهُمَّ إِنِّي أُحَرِّجُ حَقَّ الضَّعِيفَيْنِ: الْيَتِيمِ وَالْمَرْأَةِ."

# HEYATA CIVAKÎ
## BIHEVREJIYANA ÎNSAN DIGEL ÎNSANÎ

٨٢٩- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهَا قَالَتْ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ مِنْ شَرِّ النَّاسِ مَنِ اتَّقَاهُ النَّاسُ لِشَرِّهِ."



**826.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji nav Misilmanan çi kesê xwarin û vexwarina sêwiyekî bigire ser xwe lê xwedî derkeve û tu gunehên ku nayêne efûkirin nekiribe, mitleqa wê Xwedê wî bixe cennetê."*

(T1917 Tirmizî, Birr we sile, 14)



**827.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji nav malên Misilmanan mala herî baş ew e ku tê de sêwiyek heye û miameleyeke baş pê re tê kirin. Ji nav malên Misilmanan mala herî xirab ew e ku tê de sêwiyek heye ku pê re bi xirabî tê miamelekirin."*

(İM3679 Ibn Maceh, Edeb, 6)



**828.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Ez derheqê mafê herdu zeîfan; sêwî û jinê de mirovan hişyar dikim, xwarina heqên wan jî qedexe dikim."*

(İM3678 Ibn Maceh, Edeb, 6; HM9664 Ibn Hanbel, II, 440)

# HEYATA CIVAKÎ
## BIHEVREJIYANA ÎNSAN DIGEL ÎNSANÎ

**829.** Ji xanima Pêxember Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirovê herî neqenc, ew kes e ku mirov ji ber xirabiya wî xwe jê diparêzin."*

(MU1639 Muwatta', Husnu'l-xuluq, 1)



٨٣٠- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ رضي الله عنه قَالَ: أَمَرَنَا النَّبِيُّ ﷺ بِسَبْعٍ: بِعِيَادَةِ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعِ الْجَنَائِزِ، وَتَشْمِيتِ الْعَاطِسِ، وَنَصْرِ الضَّعِيفِ، وَعَوْنِ الْمَظْلُومِ، وَإِفْشَاءِ السَّلَامِ، وَإِبْرَارِ الْمُقْسِمِ...



٨٣١- عَنْ عَائِشَةَ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ لَهَا: "إِنَّهُ مَنْ أُعْطِيَ حَظَّهُ مِنَ الرِّفْقِ، فَقَدْ أُعْطِيَ حَظَّهُ مِنْ خَيْرِ الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَصِلَةُ الرَّحِمِ، وَحُسْنُ الْخُلُقِ، وَحُسْنُ الْجِوَارِ يَعْمُرَانِ الدِّيَارَ، وَيَزِيدَانِ فِي الْأَعْمَارِ."



٨٣٢- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ الْمُؤْمِنِينَ فِي تَوَادِّهِمْ وَتَرَاحُمِهِمْ وَتَعَاطُفِهِمْ، مَثَلُ الْجَسَدِ، إِذَا اشْتَكَى مِنْهُ عُضْوٌ، تَدَاعَى لَهُ سَائِرُ الْجَسَدِ بِالسَّهَرِ وَالْحُمَّى."



٨٣٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الْمُؤْمِنُ مَأْلَفٌ، وَلَا خَيْرَ فِيمَنْ لَا يَأْلَفُ وَلَا يُؤْلَفُ."

**830.** Berra' bin 'Azib (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê emrê me bi van heft tiştan kir: *Serdana nexweşan, çûyîna bi cenaze re (heta meqberê), ji kesê pişikî re ji Xwedê rehmet xwestin, alîkariya kesê zeîf, alîkariya kesê mezlûm, selamdan û tesdîqkirina kesê sondxarî.*"

(B6235 Buxarî, Îti'zan, 8)



**831.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: "*Kesê nesîbê xwe ji rifqê (bi nermî miamelekirin) girtibe, ewî nesîbê xwe ji xêra dinya û axîretê jî girtiye. Sileê rehmê (pêkanîna heqê eqrebatiyê), xweş exlaqî û xweş cîrantî jî bajaran ava dikin û umrê mirovan dirêj dikin.*"

(HM25773 Ibn Hanbel, VI, 159)



**832.** Ji Nu'man bin Beşîr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mumin, di hezjihevkirin û lihevmerhemetkirin û di hevdugirtinê de weke bedenekî ne; dema ezayek ji bedenê êşiha, beden tev dikeve tayê û bêxewiyê.*"

(M6586 Muslim, Birr we sile, 66)



**833.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mumin hevaloki ye. Xêr di kesê hevaltiyê nake û hevaltî pêre nayê kirin de nîn e.*"

(HM9187 Ibn Hanbel, II, 400)

# PIŞTEVANIYA CIVAKÎ Û ULFET
## HUNERA JIYANA BI MISILMANTÎ

٨٣٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الْمُؤْمِنُ مَأْلَفٌ، وَلَا خَيْرَ فِيمَنْ لَا يَأْلَفُ وَلَا يُؤْلَفُ."



٨٣٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنِ اسْتَعَاذَ بِاللَّهِ فَأَعِيذُوهُ، وَمَنْ سَأَلَ بِاللَّهِ فَأَعْطُوهُ، وَمَنْ دَعَاكُمْ فَأَجِيبُوهُ، وَمَنْ صَنَعَ إِلَيْكُمْ مَعْرُوفًا فَكَافِئُوهُ، فَإِنْ لَمْ تَجِدُوا مَا [تُكَافِئُونَهُ] فَادْعُوا لَهُ حَتَّى تَرَوْا أَنَّكُمْ قَدْ كَافَأْتُمُوهُ."



٨٣٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَحَبَّ أَنْ يُزَحْزَحَ عَنِ النَّارِ وَيَدْخُلَ الْجَنَّةَ فَلْتُدْرِكْهُ مَنِيَّتُهُ وَهُوَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ، وَيَأْتِي إِلَى النَّاسِ مَا يُحِبُّ أَنْ يُؤْتَى إِلَيْهِ."



٨٣٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَلَا أُخْبِرُكُمْ بِمَنْ يَحْرُمُ عَلَى النَّارِ، وَ بِمَنْ تَحْرُمُ عَلَيْهِ النَّارُ؟ عَلَى كُلِّ قَرِيبٍ هَيِّنٍ لَيِّنٍ سَهْلٍ."



# PIŞTEVANIYA CIVAKÎ Û ULFET
## HUNERA JIYANA BI MISILMANTÎ

**834.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin hevaloki ye. Xêr di kesê hevaltiyê nake û hevaltî pêre nayê kirin de nîn e."*

(HM9187 Ibn Hanbel, II, 400)



**835.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê xwe bi Xwedê siparte we wî bispêrin, kesê bi Xwedê ji we xwest bidinê, kesê gazî we kir cewaba wî bidin, kesê qenciyek li we kir wî bê dilxweşkirin nehêlin. Heke tiştek a ku hûn dilê wî pê xweş bikin, we nedît jê re dua bikin, heta ku hûn zanibin ku we dilê wî xweş kir."*

(D1672 Ebû Dawûd, Zekat, 38)



**836.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bixwaze ji cehnemê dûr bibe û bikeve cennetê, bila hêj rastî mirinê nehatî îmanê bi Xwedê û bi Roja Qiyametê bîne û çewa dixwaze ku mirov pê re miamele bikin bila ew jî wisa bi wan re miamele bike."*

(HM6807 Ibn Hanbel, II, 192; M4776 Muslim, Îmare, 46)



**837.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma ez ji we re bêjim cehneme ji kî re heram e û kî ji cehnemê re heram e? Kesê hevalokî, tebîetnerm û karsivik."*

(T2488 Tirmizî, Sifatu'l-qiyame, 45)



٨٣٨- عَنِ الزُّهْرِيِّ قَالَ: حَدَّثَنِي أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ ﵁: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَبَاغَضُوا، وَلاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَ تَدَابَرُوا، وَكُونُوا عِبَادَ اللَّهِ إِخْوَانًا، وَلاَ يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يَهْجُرَ أَخَاهُ فَوْقَ ثَلاَثَةِ أَيَّامٍ."

# URF Û EDET
## TIŞTÊN CIVAKÊ BAŞ Û XWEŞIK DÎTÎ

٨٣٩- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَنْ سَنَّ فِى الإِسْلاَمِ سُنَّةً حَسَنَةً فَعُمِلَ بِهَا بَعْدَهُ كُتِبَ لَهُ مِثْلُ أَجْرِ مَنْ عَمِلَ بِهَا وَلاَ يَنْقُصُ مِنْ أُجُورِهِمْ شَيْءٌ وَمَنْ سَنَّ فِى الإِسْلاَمِ سُنَّةً سَيِّئَةً فَعُمِلَ بِهَا بَعْدَهُ كُتِبَ عَلَيْهِ مِثْلُ وِزْرِ مَنْ عَمِلَ بِهَا وَلاَ يَنْقُصُ مِنْ أَوْزَارِهِمْ شَيْءٌ."



٨٤٠- عَنْ جَعْفَرِ بْنِ مُحَمَّدٍ عَنْ أَبِيهِ قَالَ دَخَلْنَا عَلَى جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ ...فَقُلْتُ أَخْبِرْنِى عَنْ حَجَّةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ... فَقَالَ ﴿رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ...﴾ أَلاَ كُلُّ شَيْءٍ مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ تَحْتَ قَدَمَيَّ مَوْضُوعٌ...



**838.** Zuhrî, ji Enes bin Malik (r.) ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Hûn ji hevdû neenirin, hesûdiya hevdû nekin, pişt nedin hevdû. Gelî ebdên Xwedê! Bibin bira. Ne helal e ku Misilmanek ser sê rojan re ji birayê xwe yê Misilman bixeyîde.*"

(B6065 Buxarî, Edeb, 57)

# URF Û EDET
## TIŞTÊN CIVAKÊ BAŞ Û XWEŞIK DÎTÎ

**839.** Ji Cerîr bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Çi kesê di Îslamê de rêyek qenc veke (pêşîvantiya karekî qenc bike) û piştî wî emel pê were kirin, jê re xêra wan kesên emel pê kirine heye û ji xêra wan kesan tu tişt kêm nabe. Çi kesê di Îslamê de rêyek xirab veke (pêşîvantiya karekî xirab bike) û piştî wî emel pê were kirin, jê re gunehê wan kesên emel pê kirine heye û ji gunehên wan kesan tu tişt kêm nabe.*"

(M6800 Muslim, Ilim, 15)



**840.** Cefer bin Muhemmed (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku gotî: "Ez çûme cem Cabir bin Ebdillah... Min got: 'ji min re behsa hecca Resûlê Xwedê (s.) bike'... Ewî jî got: Resûlê Xwedê (s.) got: '...*Baş bizanin, tev edetên cahiliyyetê di bin lingê min de ne; hatine betalkirin û rakirin...*'"

(M2950 Muslim, Hec, 147)



٨٤١- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ لِأَهْلِ الْجَاهِلِيَّةِ يَوْمَانِ فِى كُلِّ سَنَةٍ يَلْعَبُونَ فِيهِمَا لَمَّا قَدِمَ النَّبِيُّ ﷺ الْمَدِينَةَ قَالَ: "كَانَ لَكُمْ يَوْمَانِ تَلْعَبُونَ فِيهِمَا وَقَدْ أَبْدَلَكُمُ اللَّهُ بِهِمَا خَيْرًا مِنْهُمَا يَوْمَ الْفِطْرِ وَيَوْمَ الأَضْحَى."



٨٤٢- أَنَّ أَبَا مَالِكٍ الْأَشْعَرِيَّ حَدَّثَهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعٌ فِى أُمَّتِى مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ لاَ يَتْرُكُونَهُنَّ الْفَخْرُ فِى الأَحْسَابِ وَالطَّعْنُ فِى الأَنْسَابِ وَالإِسْتِسْقَاءُ بِالنُّجُومِ وَالنِّيَاحَةُ."



٨٤٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَطَمَ الْخُدُودَ وَشَقَّ الْجُيُوبَ وَدَعَا بِدَعْوَى الْجَاهِلِيَّةِ."

# HEQÊ CÎRANTIYÊ
## ŞÎRETA CIBRAÎL

٨٤٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ لاَ يَأْمَنُ جَارُهُ بَوَائِقَهُ."



**841.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Di Dewra Cahiliyetê de her sal du roj hebûn mirovan di wan de cejn û şahî dikirin. Dema Resûlê Xwedê (s.) hate Medînê got: *'Du rojê hewe hebûn we di wan de keyf û şahî dikir. Xwedê ew herdu roj bi du rojên xêrtir guherandiye. Ew jî roja Eyda Remezanê û roja Eyda Qurbanê ye.'*"

(N1557 Nesaî, Salatu'l-'îdeyn, 1)



**842.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di ummeta min de çar tişt hene ji edetên Dewra Cahiliyetê ne (zûbizû) dev ji wan bernadin. Îftîxara bi eslê xwe, zemma neseba, xwestina baranê bi sitêrkan û şîna miriya bi giriyê bilind."*

(M2160 Muslim, Cena'iz, 29)



**843.** Ji Ebdîllah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê (şîna miriyan) bi lêdana lemika, bi cilqetandinê û bi feryad û fîxankirina dewra cahiliyetê bigire ne ji me ye."*

(B1294 Buxarî, Cena'iz, 3)

# HEQÊ CÎRANTIYÊ
## ŞÎRETA CIBRAÎL

**844.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê cîranê wî ji şerrê wî ne ewle be naçê cennetê."*

(M172 Muslim, Îman, 73)



٨٤٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلاَ يُؤْذِ جَارَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ."



٨٤٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ سَعْدِ بْنِ مُعَاذٍ عَنْ جَدَّتِهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَا نِسَاءَ الْمُؤْمِنَاتِ لاَ تَحْقِرَنَّ إِحْدَاكُنَّ لِجَارَتِهَا وَلَوْ كُرَاعَ شَاةٍ مُحْرَقًا."



٨٤٧- عَنْ أَبِي ذَرٍّ قَالَ: إِنَّ خَلِيلِي ﷺ أَوْصَانِي: "إِذَا طَبَخْتَ مَرَقًا فَأَكْثِرْ مَاءَهُ، ثُمَّ انْظُرْ أَهْلَ بَيْتٍ مِنْ جِيرَانِكَ، فَأَصِبْهُمْ مِنْهَا بِمَعْرُوفٍ."



٨٤٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَة أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ مُسْلِمٍ يَمُوتُ فَيَشْهَدُ لَهُ ثَلاَثَةُ أَهْلِ أَبْيَاتٍ مِنْ جِيرَانِهِ الْأَدْنَيْنَ بِخَيْرٍ، إِلَّا قَالَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى: قَدْ قَبِلْتُ شَهَادَةَ عِبَادِي عَلَى مَا عَلِمُوا، وَغَفَرْتُ لَهُ مَا أَعْلَمُ."



٨٤٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ : كَيْفَ لِي أَنْ أَعْلَمَ إِذَا أَحْسَنْتُ وَإِذَا أَسَأْتُ؟ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِذَا سَمِعْتَ جِيرَانَكَ يَقُولُونَ: قَدْ أَحْسَنْتَ، فَقَدْ أَحْسَنْتَ. وَإِذَا سَمِعْتَهُمْ يَقُولُونَ: قَدْ أَسَأْتَ، فَقَدْ أَسَأْتَ."

**845.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila îkrama mêhvanê xwe bike. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila cîranê xwe aciz neke. Kesê bawerî bi Xwedê û bi Roja Qiyametê anîbe bila an (tiştê) xêrê bêje an jî bila neştexilê."*

(B6475 Buxarî, Riqaq, 23)



**846.** 'Emr bin Se'd bin Muaz (r.) bi rêya dapîra xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî jinên Misilman! Bila kesek ji we pêpikê (di ber kelê de) şewitî jî be îkrama cîrana xwe kêm nebîne."*

(MU1698 Muwatta', Sıfatu'n-nebî, 10)



**847.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Dostê min Resûlê Xwedê (s.) ev şîret li min kir: *'Dema te şorbe çêkir, avê lê zêde bike, piştre jî li cîranê xwe meyze bike û bi şiklek minasib ji wê şorbê îkrama wan bike.'*"

(M6689 Muslim, Birr we sile, 143)



**848.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bimire û ehlê sê malên cîranê nêzîk şehdebûna başiyê jê re bidin, wê Xwedê Tebareke we Teala bêje: 'Min şehdebûna ebdên xwe li gor zanebûna wan qebûl kir û tiştên ku ez dizanim, min jê re efû kir.'"*

(HM9284 Ibn Hanbel, II, 409)



**849.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Ezê çewa zanibim ka min qencî kiriye an xirabî?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Heke te bihîst cîranê te dibêjin: Te qenc kiriye, (bizane) te qencî kiriye. Heke te ji wan bihîst dibêjin: Te xirabî kiriye, (bizane) ku te xirabî kiriye."*

(İM4223 Ibn Maceh, Zuhd, 25; HM3808 Ibn Hanbel, I, 402)

# DOSTANÎ
## MIROV LI SER EXLAQÊ HEVALÊ XWE NE

٨٥٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الْمُؤْمِنُ مَأْلَفٌ، وَلَا خَيْرَ فِيمَنْ لَا يَأْلَفُ وَلَا يُؤْلَفُ."

٨٥١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الرَّجُلُ عَلَى دِينِ خَلِيلِهِ فَلْيَنْظُرْ أَحَدُكُمْ مَنْ يُخَالِلُ."

٨٥٢- عَنْ أَبِي مُوسَى، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا مَثَلُ الْجَلِيسِ الصَّالِحِ وَالْجَلِيسِ السَّوْءِ، كَحَامِلِ الْمِسْكِ وَنَافِخِ الْكِيرِ، فَحَامِلُ الْمِسْكِ، إِمَّا أَنْ يُحْذِيَكَ، وَإِمَّا أَنْ تَبْتَاعَ مِنْهُ، وَإِمَّا أَنْ تَجِدَ مِنْهُ رِيحًا طَيِّباً، وَنَافِخُ الْكِيرِ، إِمَّا أَنْ يُحْرِقَ ثِيَابَكَ، وَإِمَّا أَنْ تَجِدَ رِيحًا خَبِيثَةً."

٨٥٣- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لاَ تُصَاحِبْ إِلاَّ مُؤْمِنًا وَلاَ يَأْكُلْ طَعَامَكَ إِلاَّ تَقِيٌّ."

# DOSTANÎ
## MIROV LI SER EXLAQÊ HEVALÊ XWE NE

**850.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mumin hevaloki ye. Xêr di kesê hevaltiyê nake û hevaltî pêre nayê kirin de nîn e."*

(HM9187 Ibn Hanbel, II, 400)



**851.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirov li ser dînê hevalê xwe ne. Bo vê yekê bila her yek ji hewe meyze bike ka bi kî re dostaniyê dike."*

(T2378 Tirmizî, Zuhd, 45; D4833 Ebû Dawûd, Edeb, 16)



**852.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela hevalê baş û hevalê xirab weke mesela wî/wê kesê/î ye ku miskê bi xwe re dihilgirê û bi nixafê pif dike. Vêca kesê miskê bi xwe re dihilgirê, an wê hediyê te bike, an wê bifiroşe te û an jî tu yê bêhna xweş jê his bikî. Lê kesê bi nixafê pif dike an wê cilê te bişewitîne an jî tu yê jê bêhna kirh his bikî."*

(M6692 Muslim, Birr we sile, 146; B5534 Buxarî, Zeba'ih we sayd, 31)



**853.** Ji Ebû Seîd (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Tenê hevaltiya kesê mumin bike û bila ji bilî kesê bi teqwa kesek xwarina te nexwe."*

(T2395 Tirmizî, Zuhd, 55; D4832 Ebû Dawûd, Edeb, 16)



٨٥٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خَيْرُ الأَصْحَابِ عِنْدَ اللَّهِ خَيْرُهُمْ لِصَاحِبِهِ، وَخَيْرُ الْجِيرَانِ عِنْدَ اللَّهِ خَيْرُهُمْ لِجَارِهِ."



٨٥٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الأَرْوَاحُ جُنُودٌ مُجَنَّدَةٌ، فَمَا تَعَارَفَ مِنْهَا ائْتَلَفَ، وَمَا تَنَاكَرَ مِنْهَا اخْتَلَفَ."

# LIHEVSILEVKIRIN
## SELAMÊ DI NAV XWE DE BELAV BIKIN

٨٥٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ حَتَّى تُؤْمِنُوا، وَلاَ تُؤْمِنُوا حَتَّى تَحَابُّوا، أَوَلاَ أَدُلُّكُمْ عَلَى شَيْءٍ إِذَا فَعَلْتُمُوهُ تَحَابَبْتُمْ؟ أَفْشُوا السَّلاَمَ بَيْنَكُمْ."



٨٥٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "حَقُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ سِتٌّ." قِيلَ: مَا هُنَّ؟ يَا رَسُولَ اللَّهِ! قَالَ: "إِذَا لَقِيتَهُ فَسَلِّمْ عَلَيْهِ، وَإِذَا دَعَاكَ فَأَجِبْهُ، وَإِذَا اسْتَنْصَحَكَ فَانْصَحْ لَهُ، وَإِذَا عَطَسَ فَحَمِدَ اللَّهَ فَسَمِّتْهُ، وَإِذَا مَرِضَ فَعُدْهُ، وَإِذَا مَاتَ فَاتَّبِعْهُ."



**854.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li cem Xwedê hevalê herî qenc ew e ku ji hevalê xwe re qenctir e. Li cem Xwedê cîranê herî qenc ew e ku ji cîranê xwe re qenctir e."*

(T1944 Tirmizî, Birr we sile, 28; DM2467 Darimî, Siyer, 3)



**855.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rih, hinek civakên berhevbûyî ne. Ji wan yê tebîetê wan ji hev bigire li hev dikin û yên tebîetê wan li hev neke ji hev diveqetihin."*

(M6708 Muslim, Birr we sile, 159 )

# LIHEVSILAVKIRIN
## SELAMÊ DI NAV XWE DE BELAV BIKIN

**856.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta hûn îmanê neynin hûn nakevin cennetê û heta hûn hez ji hev nekin hewe îman neaniye. Ma ez tişteka ku dema we kir hûnê ji hev hez bikin ji hewe re bêjim? Di nav xwe de selamê belav bikin."*

(M194 Muslim, Îman, 93)



**857.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heqê Misilmanî li ser Misilmanî şeş in."* Ewan gotin: "Ma ew çi ne ya Resûlê Xwedê!" Ewî got: *"Dema tu liqayî hatî selamê lê bike, dema tu dewet kirî qebûl bike, dema ji te nesîhet xwest nesîhetê lê bike, dema pişikî û hemdê Xwedê kir jê re dua xêrê bike, dema nexweş ket here serdana wî û dema wefat kir beşdarê cenazê wî bibe."*

(M5651 Muslim, Selam, 5)



٨٥٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو ﵄: أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ : أَيُّ الإِسْلاَمِ خَيْرٌ؟ فَقَالَ: "تُطْعِمُ الطَّعَامَ، وَتَقْرَأُ السَّلاَمَ عَلَى مَنْ عَرَفْتَ وَمَنْ لَمْ تَعْرِفْ."



٨٥٩- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَوْلَى النَّاسِ بِاللَّهِ تَعَالَى مَنْ بَدَأَهُمْ بِالسَّلاَمِ."



٨٦٠- قَالَ أَنَسٌ: قَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا بُنَىَّ! إِذَا دَخَلْتَ عَلَى أَهْلِكَ فَسَلِّمْ يَكُونُ بَرَكَةً عَلَيْكَ وَعَلَى أَهْلِ بَيْتِكَ."

# LIHEVHEDIYEKIRIN
## RÊYA GEŞKIRINA HEZJÊKIRINÊ

٨٦١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تَهَادَوْا فَإِنَّ الْهَدِيَّةَ تُذْهِبُ وَحَرَ الصَّدْرِ..."



٨٦٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَجِيبُوا الدَّاعِيَ، وَلَا تَرُدُّوا الْهَدِيَّةَ..."



**858.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Di Îslamê de kîjan miamele xêrtir e?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Tu xwarinê bidî û selamê bidî kesê tu nas dike û kesê nas nake."*

(B12 Buxarî, Îman, 6)



**859.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirê mirovan li cem Xwedê ew kesê ku pêşî silam dide ye."*

(D5197 Ebû Dawûd, Edeb, 132-133)



**860.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Kurkê min! Dema tu çûyî cem aîla xwe silam bide. Evê ji te re û ji aîla te re bibe bereket."*

(T2698 Tirmizî, Îsti'zan we adab, 10)

# LIHEVHEDIYEKIRIN
## RÊYA GEŞKIRINA HEZJÊKIRINÊ

**861.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hediya bidin hevdû. Lewra hediye dayîn kînê ji dil dirake, diavêje..."*

(T2130 Tirmizî, Wela we hibe, 6)



**862.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê hûn dewet kirin deweta wî qebûl bikin û hediya red nekin..."*

(HM3838 Ibn Hanbel, I, 405)



٨٦٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَا نِسَاءَ الْمُسْلِمَاتِ، لاَ تَحْقِرَنَّ جَارَةٌ لِجَارَتِهَا وَلَوْ فِرْسِنَ شَاةٍ."



٨٦٤- عَنْ عَائِشَةَ ﷺ قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنَّ لِي جَارَيْنِ فَإِلَى أَيِّهِمَا أُهْدِي؟ قَالَ: "إِلَى أَقْرَبِهِمَا مِنْكِ بَابًا."



٨٦٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ سَأَلَكُمْ بِاللَّهِ فَأَعْطُوهُ، وَمَنْ دَعَاكُمْ فَأَجِيبُوهُ، وَمَنْ أَهْدَى لَكُمْ فَكَافِئُوهُ، فَإِنْ لَمْ تَجِدُوا مَا تُكَافِئُوهُ فَادْعُوا لَهُ."

# SERDANA NEXWEŞAN
## HEQÊ BIRAYÊ LI HÊVIYA ŞÎFAYÊ YE

٨٦٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ تَوَضَّأَ فَأَحْسَنَ الْوُضُوءَ وَعَادَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ مُحْتَسِبًا، بُوعِدَ مِنْ جَهَنَّمَ مَسِيرَةَ سَبْعِينَ خَرِيفًا."



٨٦٧- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا عَادَ الرَّجُلُ الْمَرِيضَ خَاضَ الرَّحْمَةَ حَتَّى إِذَا قَعَدَ عِنْدَهُ قَرَّتْ فِيهِ."



**863.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî jinên Misilman! Bila tu cîrana jin, pêpilê mihekî jî be tişta cîrana wê dayiyê kêm nebîne."*

(B2566 Buxarî, Hibe, 1; M2379 Muslim, Zekat, 90)



**864.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Du cîranê min hene ez hediye bidime kîjanî?" Resûlê Xwedê (s.) got: *'Bide ya deriyê wê nêzîktirê te.'*"

(B2259 Buxarî, Şuf'a, 3)



**865.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê bi Xwedê ji we xwest bidinê, kesê gazî we kir cewaba wî bidin, kesê qenciyek li we kir wî bê dilxweşkirin nehêlin. Heke we tişteka hûn pê dilê wî xweş bikin nedît jê re dua bikin."*

(HM5703 Ibn Hanbel, II, 96)

# SERDANA NEXWEŞAN
## HEQÊ BIRAYÊ LI HÊVIYA ŞÎFAYÊ YE

**866.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi kesê xweşik destnimêj bigire û hêviya xêrê tenê ji Xwedê kirî here serdana birayê xwe yê Misilman, wê ji cehnemê mesafa heftê salî bi meşê dûr bikeve."*

(D3097 Ebû Dawûd, Cena'iz, 3)



**867.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê here serdana nexweşekî, noqî nav rehmetê dibe, vêca dema li cem rûnişt rehmet di dilê wî de tam cih digire."*

(MU1731 Muwatta', Ayn, 7)



٨٦٨- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ عَادَ مَرِيضًا لَمْ يَحْضُرْ أَجَلُهُ فَقَالَ عِنْدَهُ سَبْعَ مِرَارٍ: أَسْأَلُ اللَّهَ الْعَظِيمَ رَبَّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ أَنْ يَشْفِيَكَ، إِلاَّ عَافَاهُ اللَّهُ مِنْ ذَلِكَ الْمَرَضِ."

٨٦٩- عَنْ عَائِشَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا عَادَ مَرِيضًا يَقُولُ: "أَذْهِبِ الْبَاسَ، رَبَّ النَّاسِ، اِشْفِهِ أَنْتَ الشَّافِى، لاَ شِفَاءَ إِلاَّ شِفَاؤُكَ، شِفَاءً لاَ يُغَادِرُ سَقَمًا."

٨٧٠- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا دَخَلْتُمْ عَلَى الْمَرِيضِ فَنَفِّسُوا لَهُ فِى أَجَلِهِ فَإِنَّ ذَلِكَ لاَ يَرُدُّ شَيْئًا وَيُطَيِّبُ نَفْسَهُ."

٨٧١- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: قَالَ لِى النَّبِيُّ ﷺ : "إِذَا دَخَلْتَ عَلَى مَرِيضٍ فَمُرْهُ أَنْ يَدْعُوَ لَكَ. فَإِنَّ دُعَاءَهُ كَدُعَاءِ الْمَلاَئِكَةِ."

# AMIR Û MEMÛR
## DU UNSURÊN NÎZAMA CIVAKÎ

٨٧٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...إِذَا أُسْنِدَ الأَمْرُ إِلَى غَيْرِ أَهْلِهِ فَانْتَظِرِ السَّاعَةَ."

**868.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê here serdana nexweşeke ecelnehatî û li cemê heft cara bêje: 'Ez ji Xwedayê mezin Rebbê erşê mezin dixwazim ku te şîfa bike' mitleqa wê Xwedê afiyetê îhsanê wî nexweşî bike û ji wê nexweşiyê şîfa bike."*

(D3106 Ebû Dawûd, Cena'iz, 8)



**869.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) çûba serdana nexweşekî wiha dua dikir: *"Xwedayê mirovan! Tengiyê jê bibe, wî şîfa bike, yê şîfayê dide tu yî. Ji bilî şîfakirina te şîfa tune ye. Şîfayeke wisa bide ku hew pey re nexweşî hebe."*

(M5709 Muslim, Selam, 47)



**870.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema hûn çûn cem nexweşekî, bêjin: Tu yê sax bibî û dilê wî xweş bikin. Bêguman çenda ev tu tiştî şûnde nazivirîne jî, lêbelê dilê wî rihet dike."*

(T2087 Tirmizî, Tib, 35)



**871.** Ji Umer bin el-Xettab (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Dema tu ji bo serdanê çûyî cem nexweşekî, ji bo xwe jê dua bixwaze. Lewra dua wî weke duaya melaîketa ye."*

(ÎM1441 Ibn Maceh, Cena'iz, 1)

# AMIR Û MEMÛR
## DU UNSURÊN NÎZAMA CIVAKÎ

**872.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Dema emanet hate winda kirin, bimîne li hêviya qiyametê."*

(B6496 Buxarî, Riqaq, 35)



٨٧٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعَةٌ يُبْغِضُهُمُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: الْبَيَّاعُ الْحَلاَّفُ، وَالْفَقِيرُ الْمُخْتَالُ، وَالشَّيْخُ الزَّانِى، وَالإِمَامُ الْجَائِرُ."



٨٧٤- قَالَ عَمْرُو بْنُ مُرَّةَ لِمُعَاوِيَةَ: إِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَا مِنْ إِمَامٍ يُغْلِقُ بَابَهُ دُونَ ذَوِى الْحَاجَةِ وَالْخَلَّةِ وَالْمَسْكَنَةِ، إِلاَّ أَغْلَقَ اللَّهُ أَبْوَابَ السَّمَاءِ دُونَ خَلَّتِهِ وَحَاجَتِهِ وَمَسْكَنَتِهِ."



٨٧٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا الْإِمَامُ جُنَّةٌ، يُقَاتَلُ مِنْ وَرَائِهِ وَيُتَّقَى بِهِ. فَإِنْ أَمَرَ بِتَقْوَى اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ وَعَدَلَ، كَانَ لَهُ بِذَلِكَ أَجْرٌ. وَإِنْ يَأْمُرْ بِغَيْرِهِ، كَانَ عَلَيْهِ مِنْهُ."



٨٧٦- عَنِ ابْنِ عُمَرَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "عَلَى الْمَرْءِ الْمُسْلِمِ السَّمْعُ وَالطَّاعَةُ، فِيمَا أَحَبَّ وَكَرِهَ، إِلاَّ أَنْ يُؤْمَرَ بِمَعْصِيَةٍ، فَإِنْ أُمِرَ بِمَعْصِيَةٍ، فَلاَ سَمْعَ وَلاَ طَاعَةَ."

**873.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ellah Ezze we Celle, ji çar kesan hêrs dibe: Firoşkerê sondxwer, feqîrê qure, pîrê zînaker û rêvebirê zalim."*

(N2577 Nesaî, Zekat, 77)



**874.** 'Emr bin Murre ji Muawiye re gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Çi rêvebirê deriyê xwe ji kesên hewcedar re, ji feqîr û ji belengazan re bigire, wê Xwedê deriyên asîmanan (cennetê) pêşber feqîrî û hewcedarî û belengaziya wî bigire.'"*

(T1332 Tirmizî, Ehkam, 6)



**875.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Reîsê dewletê mertal e. Herb (mucadela parastinê) li piş wî tê kirin û bi wî (dewlet) tê parastin. Heke emrê bi teqwatiya Xwedê Ezze we Celle bike bi edalet hukm bike, pêşberê vê de jê re xêr heye. Heke eksê vê bike jê re webalê emelê wî heye."*

(M4772 Muslim, Îmare, 43)



**876.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Lazim e kesê Misilman di karê jê razî û ne razî de (her halukarî de) guh bidêre (rêvebirê xwe) û îtaeta wî bike. Belê tişta tê de bêemriya Xwedê hebe ew ji der e. Heke emrê wî hate kirin bi bêemriya Xwedê wî çaxî ne lê guhdar dike û ne jî îtaeta wî dike."*

(M4763 Muslim, Îmare, 38)

# EDALET
## BINGEHÊ HUKM E

٨٧٧- عَنْ حَاجِبِ بْنِ الْمُفَضَّلِ بْنِ الْمُهَلَّبِ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ النُّعْمَانَ بْنَ بَشِيرٍ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "اِعْدِلُوا بَيْنَ أَبْنَائِكُمْ، اِعْدِلُوا بَيْنَ أَبْنَائِكُمْ."

٨٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا الإِمَامُ جُنَّةٌ، يُقَاتَلُ مِنْ وَرَائِهِ، وَيُتَّقَى بِهِ، فَإِنْ أَمَرَ بِتَقْوَى اللَّهِ [عَزَّ وَجَلَّ] وَعَدَلَ، كَانَ لَهُ بِذَلِكَ أَجْرٌ، وَإِنْ يَأْمُرْ بِغَيْرِهِ، كَانَ عَلَيْهِ مِنْهُ."

٨٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "سَبْعَةٌ يُظِلُّهُمُ اللَّهُ فِى ظِلِّهِ يَوْمَ لاَ ظِلَّ إِلاَّ ظِلُّهُ: الإِمَامُ الْعَادِلُ..."

٨٨٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الْمُقْسِطِينَ عِنْدَ اللَّهِ تَعَالَى عَلَى مَنَابِرَ مِنْ نُورٍ عَلَى يَمِينِ الرَّحْمَنِ، الَّذِينَ يَعْدِلُونَ فِى حُكْمِهِمْ وَأَهْلِيهِمْ وَمَا وَلُوا."

# EDALET
## BINGEHÊ HUKM E

**877.** Ji Hacib bin Mufeddel bin el-Muhelleb (r.) hatiye ragihandin ku bavê wî ji Nu'man bin Beşîr bihîstiye digot: "Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Di navbera zarokên xwe de edaletê bikin, di navbera zarokên xwe de edaletê bikin!'*"

(D3544 Ebû Dawûd, Buyû' (Îcare), 83)



**878.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Reîsê dewletê mertal e. Herb (mucadela parastinê) li piş wî tê kirin û bi wî (dewlet) tê parastin. Heke emrê bi teqwatiya Xwedê Ezze we Celle bike bi edalet hukm bike, pêşberê vê de jê re xêr heye. Heke eksê vê bike jê re webalê emelê wî heye."*

(M4772 Muslim, Îmare, 43)



**879.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heft kes hene Xwedê di wê roja ku ji bilî siha wî tu sih neyî wan têxe bin siha xwe de: Rêvebirê adil..."*

(B660 Buxarî, Ezan, 36)



**880.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew rêvebirên ku li pêşber kesê ku îdare dikin û ji aîla xwe û wan mesul in bi edalet hukm dikin, li cem Xwedê li ser minberên ji nûrê li milê Xwedê yê rastê têne teltîfkirin."*

(N5381 Nesaî, Adabu'l-qudat, 1)

# RÎAYETA HEQÎYÊ
## PÊKVEANÎNA HEQÊ HER XUDAN HEQÎ

٨٨١- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِى خُطْبَتِهِ عَامَ حَجَّةِ الْوَدَاعِ: "إِنَّ اللَّهَ تَبَارَكَ وَتَعَالَى قَدْ أَعْطَى لِكُلِّ ذِى حَقٍّ حَقَّهُ..."



٨٨٢- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: كُنْتُ رِدْفَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عَلَى حِمَارٍ يُقَالُ لَهُ عُفَيْرٌ... قَالَ: "فَإِنَّ حَقَّ اللَّهِ عَلَى الْعِبَادِ أَنْ يَعْبُدُوا اللَّهَ وَلاَ يُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا، وَحَقُّ الْعِبَادِ عَلَى اللَّهِ [عَزَّ وَجَلَّ] أَنْ لاَ يُعَذِّبَ مَنْ لاَ يُشْرِكُ بِهِ [شَيْئًا]."



٨٨٣- عَنْ عَائِشَةَ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ بَعَثَ إِلَى عُثْمَانَ بْنِ مَظْعُونٍ فَجَاءَهُ فَقَالَ: "... فَإِنَّ لِأَهْلِكَ عَلَيْكَ حَقًّا، وَإِنَّ لِضَيْفِكَ عَلَيْكَ حَقًّا، وَإِنَّ لِنَفْسِكَ عَلَيْكَ حَقًّا..."



٨٨٤- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "حَقُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ خَمْسٌ: رَدُّ السَّلاَمِ، وَعِيَادَةُ الْمَرِيضِ، وَاتِّبَاعُ الْجَنَائِزِ، وَإِجَابَةُ الدَّعْوَةِ، وَتَشْمِيتُ الْعَاطِسِ."



# RÎAYETA HEQÎYÊ
## PÊKVEANÎNA HEQÊ HER XUDAN HEQÎ

**881.** Ebû Umame el-Bahilî (r.) gotiye: "Min di sala Heccetu'l-Weda'ê de ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst di xutbeyê de digot: *"Bêguman Xwedê Tebareke we Teala heqê her xudan heqî daye..."*

(T2120 Tirmizî, Wesaya, 5)



**882.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye rîwayetkirin gotiye: "Ez li ser pişta kerekî ku navê wî Ufeyr li piş Pêxemberê Xwedê (s.) sîwar bûbûm... Vêca Pêxember (s.) got: *"Bêguman heqê Xwedê li ser 'ebdên Wî ev e ku îbadetê wî bikin û tu şirîkan jê re çênekin. Heqê 'ebdan jî li ser Xwedê ev e ku Xwedê Teala ezabê nede ebdên xwe yê ku jê re tu şirîk çênekirine."*

(M144 Muslim, Îman, 49)



**883.** Ji Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) (dema bihîst ku Osman bin Mezûn xwe ji dinyayê dûr kiriye û xwe daye îbadetê) zilamek şiyande cem Osman bin Mezûn ku gaziya wî bike. Vêca dema hat Resûlê Xwedê jê re got: "... *Heqê ehlê mala te li ser te heye, heqê mêhvanê te li ser te heye û heqê nefsa te li ser te heye...*"

(D1369 Ebû Dawûd, Tatawu', 27)



**884.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heqê Misilmanî li ser Misilmanî pênc in: Selamdan, serdana nexweşî, lipeyçûna cenaze (heta meqberê) qebûlkirina de'wetê û ji kesê pişikî re dua kirin."*

(B1240 Buxarî, Cena'iz, 2)



٨٨٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَتْ عِنْدَهُ مَظْلَمَةٌ لِأَخِيهِ فَلْيَتَحَلَّلْهُ مِنْهَا..."

# AŞÎTÎ
## SİLEMETÎ Û XWEŞÎ

٨٨٦- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ إِذَا سَلَّمَ قَالَ: "اَللَّهُمَّ! أَنْتَ السَّلاَمُ وَمِنْكَ السَّلاَمُ، تَبَارَكْتَ يَا ذَا الْجَلاَلِ وَالْإِكْرَامِ."



٨٨٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَتَمَنَّوْا لِقَاءَ الْعَدُوِّ، وَسَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ..."



٨٨٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "أَلاَ مَنْ قَتَلَ نَفْسًا مُعَاهِدَةً لَهُ ذِمَّةُ اللَّهِ وَذِمَّةُ رَسُولِهِ فَقَدْ أَخْفَرَ بِذِمَّةِ اللَّهِ فَلاَ يَرِحْ رَائِحَةَ الْجَنَّةِ..."



٨٨٩- عَنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ: أَنَّ أَهْلَ قُبَاءٍ اقْتَتَلُوا حَتَّى تَرَامَوْا بِالْحِجَارَةِ، فَأُخْبِرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِذَلِكَ فَقَالَ: "اِذْهَبُوا بِنَا نُصْلِحُ بَيْنَهُمْ."

**885.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê neheqiyek li birayê xwe kiribê bila helalîye jê bixwaze..."*

(B6534 Buxarî, Riqaq, 48)

# AŞÎTÎ
## SİLEMETÎ Û XWEŞÎ

**886.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) wextê selama nimêjê dida (piştre) digot: *"Ellahumme ente's-selam we mînke's-selam, tebarekte ya Ze'l-celalî we'l-îkram" (Xwedayê min! Tu aşîtî û xweşi yî, aşîtî û xweşî ji Te peyda dibe. Ey xwedanê bilindayî û îkramê! Tu çi qeder ji her kêmasiyê dûr î!"*

(D1512 Ebû Dawûd, Tefrîu ebwabi'l-witr, 25)



**887.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Daxwaza liqabûna neyar nekin. Ji Xwedê daxwaza dûrmayîna ji musîbetê bikin; afiyetê bixwazin..."*

(DM2470 Darimî, Siyer, 6; B7237 Buxarî, Temennî, 8)



**888.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bizanin! Kesê mirovekî peymandar ê ku Xwedê û Resûlê wî ewleyî dayiyê bikuje, ewî soz û peymana Xwedê xira kiriye, vêca ew bêhna cennetê jî nake..."*

(T1403 Tirmizî, Diyat, 11)



**889.** Ji Sehl bin Seîd (r.) hatiye ragihandin ku ehlê Qubayê bi hev re şer kirin heta bi kevira danîne hev. Xeber dane Resûlê Xwedê (s.). Vêca got: *"De ka em herin wan li hev bênin."*

(B2693 Buxarî, Sulh, 3)

# ŞIDDET
## TEHDÎDA YEKÎTÎ Û ARAMIYÊ

٨٩٠- عن عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَا عَائِشَةُ! إِنَّ اللَّهَ رَفِيقٌ يُحِبُّ الرِّفْقَ، وَيُعْطِي عَلَى الرِّفْقِ مَا لاَ يُعْطِي عَلَى الْعُنْفِ، وَمَا لاَ يُعْطِي عَلَى مَا سِوَاهُ."



٨٩١- عَنْ أَبِي صِرْمَةَ صَاحِبِ النَّبِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ ضَارَّ أَضَرَّ اللَّهُ بِهِ، وَمَنْ شَاقَّ شَاقَّ اللَّهُ عَلَيْهِ."



٨٩٢- عَنْ هِشَامِ بْنِ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ قَالَ: مَرَّ بِالشَّامِ عَلَى أُنَاسٍ، وَقَدْ أُقِيمُوا فِي الشَّمْسِ، وَصُبَّ عَلَى رُءُوسِهِمُ الزَّيْتُ، فَقَالَ مَا هَذَا؟ قِيلَ: يُعَذَّبُونَ فِي الْخَرَاجِ، فَقَالَ: أَمَا إِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّ اللَّهَ يُعَذِّبُ الَّذِينَ يُعَذِّبُونَ النَّاسَ فِي الدُّنْيَا."



٨٩٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا ضَرَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ شَيْئًا قَطُّ بِيَدِهِ، وَلاَ امْرَأَةً، وَلاَ خَادِمًا، إِلاَّ أَنْ يُجَاهِدَ فِي سَبِيلِ اللَّهِ...



# ŞIDDET
## TEHDÎDA YEKÎTÎ Û ARAMIYÊ

**890.** Ji xanima Resûlê Xwedê (s.) Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ey Aîşe! Xwedê xwedan rifq e (miamela bi nermî) û hez ji rifqê dike. Xêra ku pêşber hovîtî û hişkî û miameleyên dîtirê dijî nezaketê nadê de, dide miamela bi rifqê."*

(M6601 Muslim, Birr we sile, 77)



**891.** Ji sehabiyê Pêxember (s.) Ebû Sirme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ziyanê bide, wê Xwedê jî ziyanê bide wî û kesê tengiyê bide, wê Xwedê jî tengiyê bidiyê."*

D3635 Ebû Dawûd, Qeda" (Eqdiye), 31)



**892.** Ji Hîşam bin Hekîm bin Hîzam (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Li Şamê liqayî mirovina hat; duhnê zeytûna li serê wan hatibû rijandin û li ber tava rojê hatibûn sekinandin. Vêca pirsî: 'Ma ev çi ye?' Gotin: 'Xeraca xwe nedane, bo vê yekê têne cezakirin' Li ser vê yekê got: 'Zanibin ku min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê di dinyayê de îşkenceyê li mirovan dikin bê guman wê Xwedê wan bide ezabê.'*"

(M6657 Muslim, Birr we sile, 117)



**893.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ji bilî cîhadkirina di rêya Xwedê de, Resûlê Xwedê (s.) bi destê xwe li tu tiştî; li tu kesî nedaye. Ne li pîreka ne jî li xizmetçiya..."

(M6050 Muslim, Feda'il, 79)



٨٩٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: مَرَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِشَيْخٍ يُهَادَى بَيْنَ اثْنَيْنِ فَقَالَ: "مَا بَالُ هَذَا؟" فَقَالُوا: نَذَرَ أَنْ يَمْشِيَ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ غَنِيٌّ عَنْ تَعْذِيبِ هَذَا نَفْسَهُ، مُرْهُ فَلْيَرْكَبْ."

# EMRÊ BILME'RÛF-NEHYA 'ENI'L-MUNKER

## TEŞWÎQA QENCIYÊ, MEN'A JI XIRABIYÊ

٨٩٥- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: ...سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ رَأَى مُنْكَرًا فَاسْتَطَاعَ أَنْ يُغَيِّرَهُ بِيَدِهِ فَلْيُغَيِّرْهُ بِيَدِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِلِسَانِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِقَلْبِهِ، وَذَلِكَ أَضْعَفُ الْإِيمَانِ."



٨٩٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَمْ يَرْحَمْ صَغِيرَنَا وَيُوَقِّرْ كَبِيرَنَا وَيَأْمُرْ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَ عَنِ الْمُنْكَرِ."



**894.** Enes (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) li ber pîrekalekî re derbas bû ku ew çengê xwe daniye ser navmilê du zilaman û bi zehmetî bi rê ve diçe. Vêca pirsî *'Ma çi ji vî zilamî hatiye?'* Gotin: 'Ewî nezr kiriye ku (heta Kebê) bi rê ve here.' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Îhtiyaciya Xwedê bi danezabkirina wî nefsa xwe nîn e. Jê re bêjin bila li suwariya xwe suwar bibe.'"*

(N3884 Nesaî, Eyman we nuzûr, 42)

# EMRÊ BILME'RÛF-NEHYA 'ENI'L-MUNKER
## TEŞWÎQA QENCIYÊ, MEN'A JI XIRABIYÊ

**895.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê ji hewe xirabiyekî bibîne û karibe bi destê xwe rast bike, bila bi destê xwe rast bike, heke ne karî bila bi zimanê xwe, heke ne karî bila bi dilê xwe. Ev jî lazimiya îmanê ya herî piçûk e."*

(D1140 Ebû Dawûd, Salat, 239-242)



**896.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê rehmê li piçûkê me neke û hurmeta mezinê me negire, emrê bi qenciyê û men'a ji xirabiyê neke ew ne ji me ye."*

(T1921 Tirmizî, Birr we sile, 15)



٨٩٧- حَدَّثَنَا سَعِيدُ بْنُ أَبِى بُرْدَةَ بْنِ أَبِى مُوسَى الأَشْعَرِيِّ عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ صَدَقَةٌ"، قَالُوا: فَإِنْ لَمْ يَجِدْ؟ قَالَ: "فَيَعْمَلُ بِيَدَيْهِ فَيَنْفَعُ نَفْسَهُ وَيَتَصَدَّقُ"، قَالُوا: فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ أَوْ لَمْ يَفْعَلْ؟ قَالَ: "فَيُعِينُ ذَا الْحَاجَةِ الْمَلْهُوفَ"، قَالُوا: فَإِنْ لَمْ يَفْعَلْ؟ قَالَ: "فَلْيَأْمُرْ بِالْخَيْرِ، أَوْ قَالَ: بِالْمَعْرُوفِ"، قَالَ: فَإِنْ لَمْ يَفْعَلْ؟ قَالَ: "فَلْيُمْسِكْ عَنِ الشَّرِّ فَإِنَّهُ لَهُ صَدَقَةٌ."



٨٩٨- عَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ لَتَأْمُرُنَّ بِالْمَعْرُوفِ وَلَتَنْهَوُنَّ عَنِ الْمُنْكَرِ أَوْ لَيُوشِكَنَّ اللَّهُ أَنْ يَبْعَثَ عَلَيْكُمْ عِقَابًا مِنْهُ ثُمَّ تَدْعُونَهُ فَلاَ يَسْتَجِيبُ لَكُمْ."



٨٩٩- عَنْ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ جَرِيرٍ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَا مِنْ قَوْمٍ يُعْمَلُ فِيهِمْ بِالْمَعَاصِي هُمْ أَعَزُّ مِنْهُمْ وَأَمْنَعُ لَا يُغَيِّرُونَ إِلَّا عَمَّهُمْ اللَّهُ تَعَالَى بِعِقَابِهِ."

# CÎHAD
## MUCADELEYA DI RÊYA XWEDÊ DE/MUCADELA HEYÎNÊ

٩٠٠- عَنْ عَمْرِو بْنِ مَالِكٍ الْجَنْبِيِّ قَالَ: حَدَّثَنِي فَضَالَةُ بْنُ عُبَيْدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ: "...الْمُجَاهِدُ مَنْ جَاهَدَ نَفْسَهُ فِي طَاعَةِ اللَّهِ..."



**897.** Seîd bin Ebî Burde bin Ebî Mûsa el-Eş'erî (r.), bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Lazim e her Misilman sedeqe bide."* Gotin: "Ma heke tişteka ku bide nedît?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Wê demê wê bi destê xwe şuxul bike, wê feydê bide xwe û wê sedqe jî bide."* Gotin: "Ma heke nekarî an jî nekir?" Got: *"Wê alîkariya kesê muhtac û mexdûr bike."* Gotin: "Ma heke nekir?" Got: *"Bila emrê bi xêrê/qenciyê bike."* Gotin: "Ma heke nekir?" got: *"Bila xirabiyê neke ev jê re sedeqe ye."*

(B6022 Buxarî, Edeb, 33)



**898.** Ji Huzeyfe bin el-Yeman (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi Wiyê ku nefsa min di destê wî de ye sond dixwum: An hûn ê emrê bi qenciyê û men'a ji xirabiyê kin an jî nêzîke ku Xwedê ji milê xwe ve ezabekî bi ser we de bi rê ke, piştre jî hûn ê dua bikin belê ew ê dua we qebûl neke."*

(T2169 Tirmizî, Fîten, 9)



**899.** 'Ubeydullah bin Cerîr (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi qewmê ku di nav wan de guneh têne kirin û ew ji yên gunehan dikin hêztir û kêrhatîtir bin belê cardî jî men'a wan ji gunehan nekin, mitleqa wê Xwedê wî qewmî tevî bide ezabê."*

(HM19466 Ibn Hanbel, IV, 366)

# CÎHAD
## MUCADELEYA DI RÊYA XWEDÊ DE/MUCADELA HEYÎNÊ

**900.** 'Emr bin Malik el-Cenbî gotiye: "Fedale bin Ubeyd ji min re got: 'Resûlê Xwedê (s.) di Heccetu'l-Weda'ê de got: '... *Mucahid, ew kes e ku di rêya Xwedê de bi nefsa xwe re cîhadê dike...*'"

(HM24458 Ibn Hanbel, VI, 22)



٩٠١- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "جَاهِدُوا بِأَيْدِيكُمْ وَأَلْسِنَتِكُمْ وَأَمْوَالِكُمْ."



٩٠٢- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَفْضَلُ الْجِهَادِ، كَلِمَةُ عَدْلٍ عِنْدَ سُلْطَانٍ جَائِرٍ."



٩٠٣- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ جَهَّزَ غَازِيًا فِى سَبِيلِ اللَّهِ فَقَدْ غَزَا، وَمَنْ خَلَفَهُ فِى أَهْلِهِ بِخَيْرٍ فَقَدْ غَزَا."



٩٠٤- عَنْ أَبِى ذَرٍّ رضي الله عنه قَالَ: سَأَلْتُ النَّبِيَّ ﷺ : أَيُّ الْعَمَلِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "إِيمَانٌ بِاللَّهِ وَجِهَادٌ فِى سَبِيلِهِ."

**901.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi destê xwe, bi zimanê xwe û bi malê xwe cîhadê bikin."*

(N3194 Nesaî, Cîhad, 48)



**902.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Cîhada herî baş, gotina heq e li hember rêvebirekî zalim."*

(İM4011 Ibn Maceh, Fîten, 20; D4344 Ebû Dawûd, Melahim, 17)



**903.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê eskerekî di rêya Xwedê de bi çek û berg bike, weke ku ewî bi xwe herb kirî (jê re xêr heye). Kesê baş xwedîtiyê li aîla eskerekî bike weke ku wî bi xwe herb kirî (jê re xêr heye)."*

(M4902 Muslim, Îmare, 135; B2843 Buxarî, Cîhad, 38)



**904.** Ji Ebû Zer (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: 'Kîjan emel xêra wê zehftir e.?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Baweriya bi Xwedê û cîhada di rêya wî de.'*"

(B2518 Buxarî, 'Itk, 2)

# HUQÛQA HERBÊ
## AŞÎTÎ ESAS E

٩٠٥- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "الْغَزْوُ غَزْوَانِ فَأَمَّا مَنِ ابْتَغَى وَجْهَ اللَّهِ وَأَطَاعَ الإِمَامَ وَأَنْفَقَ الْكَرِيمَةَ وَيَاسَرَ الشَّرِيكَ وَاجْتَنَبَ الْفَسَادَ كَانَ نَوْمُهُ وَنُبْهُهُ أَجْرًا كُلُّهُ وَأَمَّا مَنْ غَزَا رِيَاءً وَسُمْعَةً وَعَصَى الإِمَامَ وَأَفْسَدَ فِى الأَرْضِ فَإِنَّهُ لاَ يَرْجِعُ بِالْكَفَافِ."



٩٠٦- عَنْ أَبِى النَّضْرِ، عَنْ كِتَابِ رَجُلٍ مِنْ أَسْلَمَ مِنْ أَصْحَابِ النَّبِيِّ ﷺ يُقَالُ لَهُ عَبْدُ اللَّهِ بْنُ أَبِى أَوْفَى، فَكَتَبَ إِلَى عُمَرَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ، حِينَ سَارَ إِلَى الْحَرُورِيَّةِ، يُخْبِرُهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ، كَانَ فِى بَعْضِ أَيَّامِهِ الَّتِى لَقِيَ فِيهَا الْعَدُوَّ، يَنْتَظِرُ حَتَّى إِذَا مَالَتِ الشَّمْسُ قَامَ فِيهِمْ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! لاَ تَتَمَنَّوْا لِقَاءَ الْعَدُوِّ وَاسْأَلُوا اللَّهَ الْعَافِيَةَ، فَإِذَا لَقِيتُمُوهُمْ فَاصْبِرُوا، وَاعْلَمُوا أَنَّ الْجَنَّةَ تَحْتَ ظِلاَلِ السُّيُوفِ."



٩٠٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْحَرْبُ خُدْعَةٌ."



# HUQÛQA HERBÊ
## AŞÎTÎ ESAS E

**905.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Herb du cure ye: Kesê rizaya Xwedê bixwaze, itaeta serleşkerê xwe bike, malê xwe yê bi qîmet di vê rêyê de xerc bike, bi hevalê xwe re bi rihetî miamele bike û xwe ji xirabî û fesadiyê dûr bike, xewa wî û şiyariya wî tev de jê re xêr in. Kesê ji bo riyakarî û rûmetkirinê herbê bike, bêemriya serleşkerê xwe bike, li ser rûyê zemîn fesadî û xirabiyê bike, tuyî xêrê jê re nîn e."*

(N3190 Nesaî, Cîhad, 46)



**906.** Ebu'n-Nadr, ji nameya zilamek ji qebîla Eslem û ji sehabiyê Pêxember (s.) ku navê wî Ebdullah bin Ebî Ewfa ye neql kiriye ku Ebdullah bin Ebî Ewfa, ev name dema ku di rêya herba Herûriyan (Xaricî) de bû ji Umer bin Ubeydîllah re nivîsî bû. Di nameyê de digot: "Dema Resûlê Xwedê (s.) di herbeka ku liqayî neyar hatî de bû, ma sekinî heta tavê baskî rojava ve meyl kir, rabû ser xwe û got: *'Gelî mirovan! Daxwaza liqabûna neyar nekin. Ji Xwedê daxwaza dûrmayîna ji musîbetê; afiyetê bikin. Vêca dema hûn liqayî neyar hatin sebrê bikin. Zanibin ku cennet di bin siha şûran de ye.'"*

(M4542 Muslim, Cîhad we siyer, 20; B3025 Buxarî, Cîhad, 156)



**907.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Herb, hîle ye."*

(M4540 Muslim, Cihad we Siyer, 18; B3030 Buxarî, Cîhad, 157)



٩٠٨- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ بُرَيْدَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَمَّرَ أَمِيرًا عَلَى جَيْشٍ أَوْ سَرِيَّةٍ أَوْصَاهُ فِى خَاصَّتِهِ بِتَقْوَى اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ وَمَنْ مَعَهُ مِنَ الْمُسْلِمِينَ خَيْرًا ثُمَّ قَالَ: "أُغْزُوا بِاسْمِ اللَّهِ فِى سَبِيلِ اللَّهِ قَاتِلُوا مَنْ كَفَرَ بِاللَّهِ أُغْزُوا وَ لاَ تَغُلُّوا وَلاَ تَغْدِرُوا وَلاَ تَمْثُلُوا وَلاَ تَقْتُلُوا وَلِيدًا..."



٩٠٩- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ قَالَ: ثِنْتَانِ حَفِظْتُهُمَا عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الْإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ فَإِذَا قَتَلْتُمْ فَأَحْسِنُوا الْقِتْلَةَ..."

# HUQÛQA ESÎRAN
## JI HERKESÎ RE AZADÎ

٩١٠- عَنْ أَبِى مُوسَى عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "فُكُّوا الْعَانِيَ، وَأَجِيبُوا الدَّاعِيَ، وَعُودُوا الْمَرِيضَ."



٩١١- عَنْ أَبِي عَزِيزِ بن عُمَيْرٍ، أَخِي مُصْعَبِ بْنِ عُمَيْرٍ، قَالَ: كُنْتُ فِي الْأُسَارَى يَوْمَ بَدْرٍ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : اِسْتَوْصُوا بِالْأُسَارَى خَيْرًا وَكُنْتُ فِي نَفَرٍ مِنَ الْأَنْصَارِ، وَكَانُوا إِذَا قَدَّمُوا غَدَاءَهُمْ وَعَشَاءَهُمْ أَكَلُوا التَّمْرَ وَأَطْعَمُونِي الْخُبْزَ بِوَصِيَّةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِيَّاهُمْ.



**908.** Suleyman bin Bureyde ji bavê xwe rîwayet kiriye ku dema Resûlê Xwedê serleşkerek te'yînê leşkerekî an jî komleşekerekî dikir, pêşî şîreta teqwatiya Xwedê lê dikir û şîreta miamela xweş bi yên pê re ne dikir û piştre digot: "*Bi navê Xwedê û di rêya Xwedê de herbê bikin. Bi kesên înkara Xwedê dikin re herbê bikin. Herbê bikin belê xayîntiyê di malê xenîmetê de nekin. Bi laşê miriyan neleyîzin (parça jê nekin) û zarokan nekujin...*"

(M4522 Muslim, Cîhad we siyer, 3)



**909.** Şeddad bin Ews (r.) gotiye: "Ez ji Resûlê Xwedê (s.) hînê du tişta bûm. Ewî wiha kerem kir: *"Xwedê di her kar û barî de îhsan (sipehî çêkirin) ferz kiriye. Wextê we (ji ber sebebek meşrû) kuştin kir xweşik (bêîşkence) bikujin...*'"

(M5055 Muslim, Sayd we zeba'ih, 57; D2814 Ebû Dawûd, Dahaya, 10, 11)

# HUQÛQA ESÎRAN
## JI HERKESÎ RE AZADÎ

**910.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Esîran azad bikin, kesê we de'wet kir îcabet bikin, herin serdana nexweşî."

(B5174 Buxarî, Nîkah, 72)



**911.** Birayê Museb bin 'Umeyr Ebû 'Ezîz bin 'Umeyr (r.) gotiye: "Ez di nav esîrê Herba Bedrê de bûm. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Bi esîran re baş miamele bikin.'* Ez jî di destê hinek Ensariyan de bûm. Dema firavîn û şîva xwe didanîn, li ser wesiyeta Resûlê Xwedê (s.) nan û xwarin didane min û ewan (tenênîn) xurme dixwarin.'"

(MK19497 Taberanî, el-Mu'cemu'l-kebîr, XXII, 393)



٩١٢- عَنْ أَبِى أَيُّوبَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ فَرَّقَ بَيْنَ وَالِدَةٍ وَوَلَدِهَا فَرَّقَ اللَّهُ بَيْنَهُ وَبَيْنَ أَحِبَّتِهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



٩١٣- عَنْ عَلِيٍّ قَالَ: وَهَبَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ غُلاَمَيْنِ أَخَوَيْنِ فَبِعْتُ أَحَدَهُمَا فَقَالَ لِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا عَلِيُّ! مَا فَعَلَ غُلاَمُكَ؟" فَأَخْبَرْتُهُ فَقَالَ: "رُدَّهُ رُدَّهُ."

# XAZÎTÎ
## AN BIBE ŞEHÎD AN JÎ BIBE XAZÎ

٩١٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ مَكْلُومٍ يُكْلَمُ فِى اللَّهِ إِلاَّ جَاءَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَكَلْمُهُ يَدْمَى، اَللَّوْنُ لَوْنُ دَمٍ، وَالرِّيحُ رِيحُ مِسْكٍ."



٩١٥- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَفْضَلُ الصَّدَقَاتِ ظِلُّ فُسْطَاطٍ فِى سَبِيلِ اللَّهِ، وَمَنِيحَةُ خَادِمٍ فِى سَبِيلِ اللَّهِ، أَوْ طَرُوقَةُ فَحْلٍ فِى سَبِيلِ اللَّهِ."



**912.** Ebû Eyyûb (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê dayîk û zarokan (yên di nav esîran de) ji hev veqetîne, wê Xwedê jî wî Roja Qiyametê ji dostên wî veqetîne.'"*

(T1566 Tirmizî, Siyer, 17; HM23895 Ibn Hanbel, V, 413)



**913.** Elî (bin Ebî Talib) (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) du koleyên xort yên ku birayên hev bûn dane min. Min jî rabû yek ji wan firot. Resûlê Xwedê (s.) (rojekî) ji min pirsî: *"Çi bûye ji kole xortê te?"* Min jî jê re got. Ewî got: *"Şûnde bizivirîne, şûnde bizivirîne."*

(T1284 Tirmizî, Buyû', 52; ÎM2249 Ibn Maceh, Ticaret, 46)

# XAZÎTÎ
## AN BIBE ŞEHÎD AN JÎ BIBE XAZÎ

**914.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi birîndarê di rêya Xwedê de birîndar bibe, wê Roja Qiyametê di wî halî de were ku xwîn ji birîna wî diherike. Reng, rengê xwînê ye, bêhn bêhna miskê ye."*

(B5533 Buxarî, Zeba'ih we sayd, 31)



**915.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xêrtirê sedeqeyan, dana konekî ku mucahidên di rêya Xwedê de herbê dikin xwe pê bin sih bikin, an hibekirina xizmetkarekî ku di rêya Xwedê de bişuxulê, an jî hibekirina suwariyekî ku di rêya Xwedê de were bikaranîn."*

(T1627 Tirmizî, Feda'ilu'l-Cihad, 5)



٩١٦- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ جَهَّزَ غَازِيًا فِى سَبِيلِ اللَّهِ فَقَدْ غَزَا، وَمَنْ خَلَفَهُ فِى أَهْلِهِ بِخَيْرٍ فَقَدْ غَزَا."



٩١٧- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ لَمْ يَغْزُ أَوْ يُجَهِّزْ غَازِيًا أَوْ يَخْلُفْ غَازِيًا فِى أَهْلِهِ بِخَيْرٍ، أَصَابَهُ اللَّهُ بِقَارِعَةٍ."



٩١٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ الْخَطْمِيِّ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا أَرَادَ أَنْ يَسْتَوْدِعَ الْجَيْشَ قَالَ: "أَسْتَوْدِعُ اللَّهَ دِينَكُمْ وَأَمَانَتَكُمْ وَخَوَاتِيمَ أَعْمَالِكُمْ."

# ŞEHADET
## NEMIRIYA JI BO XWEDÊ

٩١٩- عَنْ حُمَيْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ عَبْدٍ يَمُوتُ لَهُ عِنْدَ اللَّهِ خَيْرٌ يَسُرُّهُ أَنْ يَرْجِعَ إِلَى الدُّنْيَا وَأَنَّ لَهُ الدُّنْيَا وَمَا فِيهَا إِلاَّ الشَّهِيدَ لِمَا يَرَى مِنْ فَضْلِ الشَّهَادَةِ فَإِنَّهُ يَسُرُّهُ أَنْ يَرْجِعَ إِلَى الدُّنْيَا فَيُقْتَلَ مَرَّةً أُخْرَى."



**916.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê eskerekî di rêya Xwedê de bi çek û berg bike, weke ku ewî bi xwe herb kirî (jê re xêr heye). Kesê baş xwedîtiyê li aîla eskerekî bike weke ku wî bi xwe herb kirî (jê re xêr heye)."*

(M4902 Muslim, İmare, 135)



**917.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê beşdarê herbê nebe, an xaziyekî bi çek û berg neke, an jî li malbata xaziyekî baş xwedî nederkeve, wê Xwedê felaketekî bêne serê wî."*

(D2503 Ebû Dawûd, Cihad, 17)



**918.** Ebdullah el-Xetmî (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) xwestiba leşkerekî bi rê bike, digot: *'Ez dînê hewe, kesên we şûnde hiştîn û encama emelên we emanetê Xwedê dikim.'"*

(D2601 Ebû Dawûd, Cihad, 73)

# ŞEHADET
## NEMIRIYA JI BO XWEDÊ

**919.** Humeyd, ji Enes bin Malik (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav ebdên Xwedê de kesê bimire û li cem Xwedê bigihe mertebeyek bilind û pêşberê ku dinya digel tiştên tê de hemî jê re bin, bixwaze vegere dinyayê, ji bilî şehîdan kesek dîtir nîne. Ji ber ku şehîd, dibîne ku şehadet çi mertebeyeke bilind e, dixwaze vegere dinyayê û careke dîtir şehîd bibe."*

(B2795 Buxarî, Cihad, 6)



٩٢٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ، وَدِدْتُ أَنِّى أُقَاتِلُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ فَأُقْتَلُ ثُمَّ أُحْيَا، ثُمَّ أُقْتَلُ ثُمَّ أُحْيَا، ثُمَّ أُقْتَلُ [ثُمَّ أُحْيَا، ثُمَّ أُقْتَلُ ثُمَّ أُحْيَا]."



٩٢١- أَنَّ سَهْلَ بْنَ أَبِى أُمَامَةَ بْنِ سَهْلِ بْنِ حُنَيْفٍ حَدَّثَهُ عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ سَأَلَ اللَّهَ الشَّهَادَةَ بِصِدْقٍ، بَلَّغَهُ اللَّهُ مَنَازِلَ الشُّهَدَاءِ، وَإِنْ مَاتَ عَلَى فِرَاشِهِ."



٩٢٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ جَبْرٍ، عَنْ أَبِيهِ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَادَ جَبْرًا ...فَقَالَ: "...اَلْقَتْلُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ شَهَادَةٌ، وَالْبَطْنُ شَهَادَةٌ، وَالْحَرَقُ شَهَادَةٌ، وَالْغَرَقُ شَهَادَةٌ، وَالْمَغْمُومُ -يَعْنِى الْهَدِمَ- شَهَادَةٌ، وَالْمَجْنُوبُ شَهَادَةٌ، وَالْمَرْأَةُ تَمُوتُ بِجُمْعٍ شَهِيدَةٌ."



٩٢٣- عَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دِينِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دَمِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ أَهْلِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ."

**920.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez sond dixwim bi Wî Xwedayê ku rihê min di destê wî de ye! Min xwest ku di rêya Xwedê de şer bikim, werim kuştin, piştre werim saxkirin, piştre werim kuştin careke dî werim saxkirin, careke dî werim kuştin û werim saxkirin, piştre werim kuştin vê carê jî werim saxkirin."*

(B7227 Buxarî, Temennî, 1)



**921.** Sehl bin Ebî Umame bin Sehl bin Huneyf (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bi rastî ji Xwedê şehadetê bixwaze, heke li ser doşeka xwe jî bimire wê Xwedê wî bigihêne merteba şehîdan."*

(M4930 Muslim, Îmare, 157)



**922.** Ebdullah bin Ebdullah bin Cebr (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) hatibû serdana Cebr (dema ku nexweş bû). Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"... Di rêya Xwedê de hatinkuştin şehadet e, mirina ji nexweşiyên daxilî şehadet e, mirina bi şewatê şehadet e, mirina bi xeniqandinê şehadet e, mirina di bin herifandinê de şehadet e, mirina bi sebep dînbûnê şehadet e, mirina pîreka bi heml şehadet e."*

(N3196 Nesaî, Cihad, 48; İM2803 Ibn Maceh, Cihad, 17)



**923.** Seîd bin Zeyd (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê di ber malê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber dînê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber xwîn û canê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber malbata xwe de were kuştin şehîd e."*

(T1421 Tirmizî, Diyat, 21)



# MUSÎBET Û MUMIN
## SEBR, METANET Û TESLÎMÎYET

٩٢٤- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَصَابَتْ أَحَدَكُمْ مُصِيبَةٌ فَلْيَقُلْ: إِنَّا لِلَّهِ وَإِنَّا إِلَيْهِ رَاجِعُونَ، اللَّهُمَّ! عِنْدَكَ أَحْتَسِبُ مُصِيبَتِى فَآجِرْنِى فِيهَا وَأَبْدِلْ لِى خَيْرًا مِنْها."



٩٢٥- عَنْ عَائِشَةَ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ مُصِيبَةٍ يُصَابُ بِهَا الْمُسْلِمُ إِلاَّ كُفِّرَ بِهَا عَنْهُ، حَتَّى الشَّوْكَةِ يُشَاكُهَا."



٩٢٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ! إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْهَمِّ وَالْحَزَنِ، وَالْكَسَلِ، وَالْبُخْلِ، وَالْجُبْنِ، وَضَلَعِ الدَّيْنِ، وَغَلَبَةِ الرِّجَالِ."



٩٢٧- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ : قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لاَ يَتَمَنَّيَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوْتَ مِنْ ضُرٍّ أَصَابَهُ، فَإِنْ كَانَ لاَ بُدَّ فَاعِلاً فَلْيَقُلِ: اللَّهُمَّ أَحْيِنِى مَا كَانَتِ الْحَيَاةُ خَيْرًا لِى، وَتَوَفَّنِى إِذَا كَانَتِ الْوَفَاةُ خَيْرًا لِى."



# MUSÎBET Û MUMIN
## SEBR, METANET Û TESLÎMÎYET

**924.** Ji Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema musîbetek hate serê yekî ji we, bila bêje: 'Em yê Xwedê ne û emê bizivirine Wî, Xwedayê min! Ez hêviya xêra vê musîbetê ji te dikim, bo vê yekê xêrê bike nesîbê min û di cihê wê de tiştek xêrtir bide min.'"*

(D3119 Ebû Dawûd, Cena'iz, 17-18; M2126 Muslim, Cena'iz, 3)



**925.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi musîbeta were serê Misilmanekî ku ew sitiryek be jî ya ku di laşe wî re çûyî mitleqa wê Xwedê bixe kefaretê gunehên wî."*

(M6565 Muslim, Birr we sile, 49; MU1719 Muwatta', Ayn, 3)



**926.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) digot: '*Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te ji kederê, ji huznê, ji tiraliyê, ji kunûjiyê, ji newêrektiyê, ji barê deynan û ji zêdegaviya mirovan.*"

(N5478 Nesaî, Îstî'aze, 25; B6369 Buxarî, De'ewat, 40)



**927.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes ji hewe ji ber musîbeteka ku hatî serê wî mirinê nexwaze. Heke mitleqa lazim e bixwaze, bila wiha bêje: 'Xwedayê min! Heta heyat ji min re xêrtir e heyata min îdame bike û heke mirin ji min re xêrtir be rihê min bistîne."*

(B5671 Buxarî, Merda, 19)



٩٢٨- عَنْ صُهَيْبٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "عَجَبًا لأَمْرِ الْمُؤْمِنِ، إِنَّ أَمْرَهُ كُلَّهُ لَهُ خَيْرٌ، وَلَيْسَ ذَاكَ لأَحَدٍ إِلاَّ لِلْمُؤْمِنِ، إِنْ أَصَابَتْهُ سَرَّاءُ شَكَرَ، فَكَانَ خَيْرًا لَهُ، وَإِنْ أَصَابَتْهُ ضَرَّاءُ صَبَرَ، فَكَانَ خَيْرًا لَهُ."

# EXLAQÊ TÎCARETÊ
## DI KIRÎNÊ DE Û DI FIROTINÊ DE DURUSTÎ

٩٢٩- عَنْ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الْبَيِّعَانِ بِالْخِيَارِ مَا لَمْ يَفْتَرِقَا، فَإِنْ صَدَقَا وَبَيَّنَا بُورِكَ لَهُمَا فِي بَيْعِهِمَا، وَإِنْ كَتَمَا وَكَذَبَا مُحِقَتِ الْبَرَكَةُ مِنْ بَيْعِهِمَا."



٩٣٠- عَنْ إِسْمَاعِيلَ بْنِ عُبَيْدِ بنِ رِفَاعَةَ، عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ: أَنَّهُ خَرَجَ مَعَ النَّبِيِّ ﷺ إِلَى الْمُصَلَّى، فَرَأَى النَّاسَ يَتَبَايَعُونَ فَقَالَ: "يَا مَعْشَرَ التُّجَّارِ" فَاسْتَجَابُوا لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ ، وَرَفَعُوا أَعْنَاقَهُمْ وَأَبْصَارَهُمْ إِلَيْهِ، فَقَالَ: "إِنَّ التُّجَّارَ يُبْعَثُونَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فُجَّارًا، إِلاَّ مَنِ اتَّقَى اللَّهَ وَبَرَّ وَصَدَقَ."



**928.** Ji Suheyb (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rewşa muminî çi xweş e! Her hal û karê wî jê re xêr e û ev rewş mexsûsê muminî ye. Heke xweşiyek lê peyda bû şukur dike; ev jê re dibe xêr. Heke tengiyek lê peyda bû sebr dike; ev jê re dibe xêr."*

(M7500 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 64)

# EXLAQÊ TÎCARETÊ
## DI KIRÎNÊ DE Û DI FIROTINÊ DE DURUSTÎ

**929.** Ji Hekîm bin Hîzam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Yê dikire (malkir) û yê difiroşe (malfiroş) heta li cem hev in karin 'eqda xwe betal bikin. Heke rastî ji hev re bêjin û (eyba mal) beyan bikin wê bereket bikeve bazara wan de. Heke ji hev re derew bikin û eyban veşêrin wê bereket ji bazara wan rabe."*

(D3459 Ebû Dawûd, Buyû', 51)



**930.** Îsmaîl bin Ubeyd bin Rîfa'e (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku digel Resûlê Xwedê (s.) çûne meydana nimêjê (xasê bi nimêjên eyda ve ye) Dema Resûlê Xwedê dît va ye mirov bazarê dikin, got: *"Gelî koma bazirganan!"* Ewan jî bersiva Pêxember (s.) dan; sitoyê xwe baskî wî ve dirêj kirin û lê meyze kirin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) (dewam kir û) got: *"Ji bilî yên teqwatiya Xwedê dikin (mesûliyeta xwe zanin), qenciyê dikin û miamela rast û durust dikin, wekî din bazirgan tev gunehkar têne vejînandin (heşr kirin.)"*

(T1210 Tirmizî, Buyû', 4)



٩٣١- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"إِذَا وَزَنْتُمْ فَأَرْجِحُوا."



٩٣٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "رَحِمَ اللَّهُ رَجُلاً سَمْحًا إِذَا بَاعَ، وَإِذَا اشْتَرَى، وَإِذَا اقْتَضَى."



٩٣٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ:"... مَنْ غَشَّنَا فَلَيْسَ مِنَّا."

# QEZENCA HELAL
## KEDA DEST, RONIYA ÇAV, XWÊHDANA ENIYÊ

٩٣٤- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"إِنَّ أَطْيَبَ مَا أَكَلَ الرَّجُلُ مِنْ كَسْبِهِ وَإِنَّ وَلَدَهُ مِنْ كَسْبِهِ."



٩٣٥- عَنْ عَلِيٍّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اللَّهُمَّ بَارِكْ لِأُمَّتِي فِي بُكُورِهَا."



**931.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema hewe kêşand zêde bikêşin (û wilo bidin)."*

(İM2222 Ibn Maceh, Ticaret, 34)



**932.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê rehma xwe li wî kesî bike ku di firotin, kirîn û sitandina deynê xwe de xweş miamele û misamehakar e."*

(B2076 Buxarî, Buyû', 16)



**933.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Kesê hîla li me bike ew ne ji me ye..."*

(M283 Muslim, Îman, 164)

# QEZENCA HELAL
## KEDA DEST, RONIYA ÇAV, XWÊHDANA ENIYÊ

**934.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman paqijtir/xweştir tişta ku mirov xwarî ya ku wî bi xwe kesp kiriye û zaroka mirovî jî ji kesba wî ye."*

(N4457 Nesaî, Buyû', 1)



**935.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Bereketê bixe destpêka rojên ummeta min de."*

(HM1320 Ibn Hanbel, I, 153)



٩٣٦- عَنِ الزُّبَيْرِ بْنِ الْعَوَّامِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لأَنْ يَأْخُذَ أَحَدُكُمْ حَبْلَهُ، فَيَأْتِيَ بِحُزْمَةِ الْحَطَبِ عَلَى ظَهْرِهِ فَيَبِيعَهَا، فَيَكُفَّ اللَّهُ بِهَا وَجْهَهُ، خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَسْأَلَ النَّاسَ، أَعْطَوْهُ أَوْ مَنَعُوهُ."



٩٣٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "كَفَى بِالْمَرْءِ إِثْمًا أَنْ يُضَيِّعَ مَنْ يَقُوتُ."



٩٣٨- عَنِ الْمِقْدَامِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا أَكَلَ أَحَدٌ طَعَامًا قَطُّ خَيْرًا مِنْ أَنْ يَأْكُلَ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ، وَإِنَّ نَبِيَّ اللَّهِ دَاوُدَ عَلَيْهِ السَّلاَمُ كَانَ يَأْكُلُ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ."

# FEQÎRÎ Û DEWLEMENDÎ

## DESTTENGÎ JÎ IMTÎHAN E Û DESTFEREHÎ JÎ!

٩٣٩- عَنْ مُعَاذِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ خُبَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ عَمِّهِ قَالَ: كُنَّا فِي مَجْلِسٍ. فَجَاءَ النَّبِيُّ ﷺ وَعَلَى رَأْسِهِ أَثَرُ مَاءٍ. فَقَالَ لَهُ بَعْضُنَا: نَرَاكَ الْيَوْمَ طَيِّبَ النَّفْسِ. فَقَالَ: "أَجَلْ. وَالْحَمْدُ لِلَّهِ" ثُمَّ أَفَاضَ الْقَوْمُ فِي ذِكْرِ الْغِنَى. فَقَالَ: "لاَ بَأْسَ بِالْغِنَى لِمَنِ اتَّقَى. وَالصِّحَّةُ لِمَنِ اتَّقَى خَيْرٌ مِنَ الْغِنَى. وَطِيبُ النَّفْسِ مِنَ النَّعِيمِ."



**936.** Ji Zubeyr bin el-'Ewwam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesek ji hewe rahêje werîsê xwe (here çiyê) û gurzek dar li pişta xwe bike bîne û bifroşe û bi vî şiklî Xwedê wî ji rûreşiyê biparêzêne, jê re çêtir e ku ji xelkê bixwaze (parsekiyê bike) ew jî ka didinê an nadinê."*

(B1471 Buxarî, Zekat, 50)



**937.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji gunehan besî mirovî ye ku îhmala wan kesên debara wan hilgirtî ser xwe bike."*

(D1692 Ebû Dawûd, Zekat, 45)



**938.** Ji Miqdam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu kesî ji keda destê xwe çêtir tuwî xwarin nexwariye. Resûlê Xwedê Dawud jî, ji keda destê xwe dixwar."*

(B2072 Buxarî, Buyû', 15)

# FEQÎRÎ Û DEWLEMENDÎ
## DESTTENGÎ JÎ IMTÎHAN E Û DESTFEREHÎ JÎ!

**939.** Muaz bin Ebdîllah bin Xubeyb (r.) bi rêya bavê xwe ji mamê xwe rîwayet kiriye ku gotiye: "Em di meclisekî de rûniştî bûn. Resûlê Xwedê (s.) serşil hate cem me. Hinekan ji me gotin: 'Em îro te xweşhal dibînin.' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Erê (rast e) hemd ji Xwedê re be.'* Piştre ehlê wê civatê ketin behsa dewlemendiyê de. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Xema dewlemendiyê ji kesê teqwa re (mesûliyeta xwe dizane) nîn e. Sihhet ji kesê teqwa re ji dewlemendiyê çêtir e. Rihetiya can, ji nimetê ye."*

(İM2141 Ibn Maceh, Tîcaret, 1; NM2131 Hakim, Mustedrek, III, 807 (2/3))



٩٤٠- عَنْ مُصْعَبِ بْنِ سَعْدٍ، قَالَ: رَأَى سَعْدٌ رضي الله عنه أَنَّ لَهُ فَضْلاً عَلَى مَنْ دُونَهُ. فَقَالَ النَّبِيُّ صلى الله عليه وسلم : "هَلْ تُنْصَرُونَ وَتُرْزَقُونَ إِلاَّ بِضُعَفَائِكُم؟"



٩٤١- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ رضي الله عنه قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ صلى الله عليه وسلم يَقُولُ: "لاَ حَسَدَ إِلاَّ فِى اثْنَتَيْنِ: رَجُلٍ آتَاهُ اللَّهُ مَالاً فَسَلَّطَهُ عَلَى هَلَكَتِهِ فِى الْحَقِّ، وَرَجُلٍ آتَاهُ اللَّهُ حِكْمَةً فَهُوَ يَقْضِى بِهَا وَيُعَلِّمُهَا."



٩٤٢- عَنْ عَائِشَةَ رضي الله عنها قَالَتْ: كَانَ النَّبِيُّ صلى الله عليه وسلم يَقُولُ: "اللَّهُمَّ إِنِّى أَعُوذُ بِكَ مِنْ فِتْنَةِ النَّارِ وَعَذَابِ النَّارِ، وَفِتْنَةِ الْقَبْرِ وَعَذَابِ الْقَبْرِ، وَشَرِّ فِتْنَةِ الْغِنَى وَشَرِّ فِتْنَةِ الْفَقْرِ..."



٩٤٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ صلى الله عليه وسلم قَالَ: "لَيْسَ الْغِنَى عَنْ كَثْرَةِ الْعَرَضِ، وَلَكِنَّ الْغِنَى غِنَى النَّفْسِ."

# PARSEKÎTÎ
## BÊRÛTIYA KU MIROVAN NIVZ DIKE

٩٤٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ صلى الله عليه وسلم : "...إِنَّ الْمَسْأَلَةَ لاَ تَصْلُحُ إِلاَّ لِثَلاَثَةٍ: لِذِى فَقْرٍ مُدْقِعٍ أَوْ لِذِى غُرْمٍ مُفْظِعٍ، أَوْ لِذِى دَمٍ مُوجِع."



**940.** Mus'eb bin Se'd (r.) gotiye: "Se'd xwe ser her kesî re didît. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: 'Ne ji zeîfên we be, alîkariya we nayê kirin û rizqê we nayê dayîn!'"

(B2896 Buxarî, Cîhad, 76)



**941.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Hesed (xibtekirin) tenê di du tiştan de durust e: Zilamek ku Xwedê mal dayiyê vêca ew musselletê ser kiriye di heqî û qenciyê de dimezixîne û zilamek ku Xwedê hikmet/ilim dayiyê vêca ew li gor wê hukum dide û wê hînê (kesên dîtir) dike."*

(B1409 Buxarî, Zekat, 5; M1896 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 268)



**942.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ev dua dikir: *'Xwedayê min! Ez xwe dispêrime te, ji fitna cehnemê, ji ezabê cehnemê, ji fitna qebrê, ji ezabê qebrê, ji şerrê fitna dewlemendiyê û ji şerrê fitna feqîriyê...'*"

(B6377 Buxarî, De'ewat, 46)



**943.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dewlemendî ne pirbûna mal e. Belê dewlemendî dewlemendiya dil e."*

(B6446 Buxarî, Riqaq, 15)

# PARSEKÎTÎ
## BÊRÛTIYA KU MIROVAN NIVZ DIKE

**944.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Ji bilî sê kesan xwestin ji tu kesî dîtir re ne durust e: Feqîrê zêde feqîr, deyndarê zêde ketî bin deynan de û kesê di bin bedêla xwînê de perçiqî."*

(D1641 Ebû Dawûd, Zekat, 26)



٩٤٥- عَنْ حَكِيمِ بْنِ حِزَامٍ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْيَدُ الْعُلْيَا خَيْرٌ مِنَ الْيَدِ السُّفْلَى، وَابْدَأْ بِمَنْ تَعُولُ..."



٩٤٦- عَنِ الزُّبَيْرِ بْنِ الْعَوَّامِ ﵁ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَأَنْ يَأْخُذَ أَحَدُكُمْ أَحْبُلاً فَيَأْخُذَ حُزْمَةً مِنْ حَطَبٍ فَيَبِيعَ فَيَكُفَّ اللَّهُ بِهِ وَجْهَهُ خَيْرٌ مِنْ أَنْ يَسْأَلَ النَّاسَ أُعْطِيَ أَمْ مُنِعَ."



٩٤٧- عَنِ الْمِقْدَامِ ﵁ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا أَكَلَ أَحَدٌ طَعَامًا قَطُّ خَيْرًا مِنْ أَنْ يَأْكُلَ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ، وَإِنَّ نَبِيَّ اللَّهِ دَاوُدَ عَلَيْهِ السَّلاَمُ كَانَ يَأْكُلُ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ."



٩٤٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ سَأَلَ النَّاسَ أَمْوَالَهُمْ تَكَثُّرًا، فَإِنَّمَا يَسْأَلُ جَمْرًا، فَلْيَسْتَقِلَّ أَوْ لِيَسْتَكْثِرْ."

# DI BAZARIYÊ DE PÎVAN
## RIZQÊ HELAL Û QEZENCA BI BEREKET

٩٤٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ نَهَى عَنْ بَيْعِ الْغَرَرِ.



**945.** Ji Hekîm bin Hîzam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Destê dide ji destê distîne çêtir e. (Dema tu didî) bi (aîla) ku tu ji nefeqê wê mesûlî dest pê bike..."*

(B1427 Buxarî, Zekat, 18; M2386 Muslim, Zekat, 95)



**946.** Ji Zubeyr bin el-'Ewwam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesek ji hewe rahêje werîsê xwe (here çiyê) û gurzek dar li pişta xwe bike bîne û bifroşe û bi vî şiklî Xwedê wî ji rûreşiyê biparêzêne, jê re çêtir e ku ji xelkê bixwaze (parsekiyê bike) ew jî ka didinê an nadinê."*

(B2373 Buxarî, Musaqat, 13)



**947.** Ji Mîqdam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu kesî ji keda destê xwe çêtir tuwî xwarin nexwariye. Resûlê Xwedê Dawud jî, ji keda destê xwe dixwar."*

(B2072 Buxarî, Buyû', 15)



**948.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji bo ku serweta xwe zêde bike parsekiyê dike, di heqîqet de ew pêloxê êgir dixwaze. Vêca bivê bila hindik bixwaze û bivê bila zêde bixwaze."*

(M2399 Muslim, Zekat,105)

# DI BAZARIYÊ DE PÎVAN
## RIZQÊ HELAL Û QEZENCA BI BEREKET

**949.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) firotina tişta ku tê de îhtîmala hîle hebe qedexe kiriye.

(D3376 Ebû Dawûd, Buyû', 24)



٩٥٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْ بَيْعِ الثَّمَرَةِ حَتَّى تَزْهُوَ. وَعَنْ بَيْعِ الْعِنَبِ حَتَّى يَسْوَدَّ، وَعَنْ بَيْعِ الْحَبِّ حَتَّى يَشْتَدَّ.



٩٥١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمَا قَالَ: قَدِمَ النَّبِيُّ ﷺ الْمَدِينَةَ، وَهُمْ يُسْلِفُونَ بِالتَّمْرِ السَّنَتَيْنِ وَالثَّلاَثَ، فَقَالَ: "مَنْ أَسْلَفَ فِى شَيْءٍ فَفِى كَيْلٍ مَعْلُومٍ وَوَزْنٍ مَعْلُومٍ إِلَى أَجَلٍ مَعْلُومٍ."



٩٥٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ:"لاَ تَلَقَّوُا الأَجْلاَبَ. فَمَنْ تَلَقَّى مِنْهُ شَيْئًا فَاشْتَرَى، فَصَاحِبُهُ بِالْخِيَارِ، إِذَا أَتَى السُّوقَ."



٩٥٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَلاَ يَبِعْ بَعْضُكُمْ عَلَى بَيْعِ بَعْضٍ، وَلاَ تَنَاجَشُوا..."



٩٥٤- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "التَّاجِرُ الصَّدُوقُ الأَمِينُ، مَعَ النَّبِيِّينَ وَالصِّدِّيقِينَ وَالشُّهَدَاءِ."

**950.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) kirîn-firotina fêkiyê negihatî, tirhê harsim û dexla xwe negirtî men' kiriye."

(İM2217 Ibn Maceh, Ticaret, 32; D3371 Ebû Dawûd, Buyû', 22)



**951.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) hate Medînê, ehlê Medînê, xurmê piştî du sal an sê sal dî derkeve (li gor 'eqda selemê) difirotin û perê wan pêşîn distandin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Kesê bi 'eqda selemê (perê pêşin mal weresiye) tiştekî bikire, lazim e pîvan û wezna wê tiştê û wextê teslîmkirinê melûm be.*"

(B2240 Buxarî, Selem, 2; M4118 Muslim, Musaqat, 127)



**952.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Neçin ji derveyê bajêr pêşiya malfiroşan (hêja negihatîn sûkê). Kesê bi vî şiklî di rê de mal (bi erzanî) bikire, dema malfiroş gihate sûkê ew karê bazara xwe betal bike."*

(İM2178 Ibn Maceh, Ticaret, 16; N4505 Nesaî, Buyû', 18)



**953.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Bazariyê li ser bazariya hevûdu nekin û muşteriya nexirênin (bê niyeta kirînê zêdekirina qîmetê tiştekî da ku muşteriyên dîtir qîmet bilindtir bikin)..."*

(M3815 Muslim, Buyû', 11)



**954.** Ji Ebû Seîd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ticarê durust ê biewle digel pêxemberan, siddîqan (mirovên raste rast) û şehîdan in."*

(T1209 Tirmizî, Buyû', 4)

# HELAL Û HERAM
## SÎNORÊ KU XWEDÊ LI BER EBDÊN XWE DANÎ

٩٥٥- عَنْ سَلْمَانَ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ السَّمْنِ وَالْجُبْنِ وَالْفِرَاءِ فَقَالَ: "الْحَلاَلُ مَا أَحَلَّ اللَّهُ فِى كِتَابِهِ، وَالْحَرَامُ مَا حَرَّمَ اللَّهُ فِى كِتَابِهِ، وَمَا سَكَتَ عَنْهُ فَهُوَ مِمَّا عَفَا عَنْهُ."



٩٥٦- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ قَالَ: سَمِعْتُهُ يَقُولُ سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: -وَأَهْوَى النُّعْمَانُ بِإِصْبَعَيْهِ إِلَى أُذُنَيْهِ- "إِنَّ الْحَلاَلَ بَيِّنٌ وَإِنَّ الْحَرَامَ بَيِّنٌ وَبَيْنَهُمَا مُشْتَبِهَاتٌ لاَ يَعْلَمُهُنَّ كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ، فَمَنِ اتَّقَى الشُّبُهَاتِ اسْتَبْرَأَ لِدِينِهِ وَعِرْضِهِ، وَمَنْ وَقَعَ فِى الشُّبُهَاتِ وَقَعَ فِى الْحَرَامِ..."



٩٥٧- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. فَإِنَّ نَفْسًا لَنْ تَمُوتَ حَتَّى تَسْتَوْفِيَ رِزْقَهَا، وَإِنْ أَبْطَأَ عَنْهَا. فَاتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. خُذُوا مَا حَلَّ، وَدَعُوا مَا حَرُمَ."



٩٥٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَيَأْتِيَنَّ عَلَى النَّاسِ زَمَانٌ لاَ يُبَالِى الْمَرْءُ بِمَا أَخَذَ الْمَالَ، أَمِنْ حَلاَلٍ أَمْ مِنْ حَرَامٍ."



# HELAL Û HERAM
## SÎNORÊ KU XWEDÊ LI BER EBDÊN XWE DANÎ

**955.** Selman (r.) gotiye: "Pirsa duhn, penîr û cilê çerm ji Resûlê Xwedê (s.) hate kirin. Ewî got: *'Helal ew e ku Xwedê di kitêba xwe de helal kiriye, heram jî ew e ku Xwedê di kitêba xwe de heram kiriye. Tişta ku di derheqê wê de tu hukm beyan nekirî ew ji tiştên mubah e.*"

(T1726 Tirmizî, Lîbas, 6; İM3367 Ibn Maceh, Et'ime, 60)



**956.** Nu'man bin Beşîr (r.) bi du tiliyên xwe îşareta bal guhên xwe ve kir û got: *"Bêguman helal diyar e û heram jî diyar e. Di navbera wan de hinek tiştên bi şibhe hene, pirên mirovan wan nizanin. Vêca kesê xwe ji tiştên bişibhe biparêze ewî dînê xwe û namûsa xwe parastiye. Kesê kete di tiştên bi şibhe de ew ketiye di heramî de..."*

(M4094 Muslim, Musaqat, 107)



**957.** Ji Cabir bin Ebdillah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî mirovan! Pêşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Lewra bêguman dereng bimîne jî tu kes berî rizqê jê re hatî teqdîrkirin nexwe namire. Naxwe Pêşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Tişta helal ji xwe re bibin û ya heram be xwe jê dûr bikin."*

(İM2144 Ibn Maceh, Tîcaret, 2)



**958.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wê zemanek wisa were, mirov guh nade ka malê xwe ji ku derê bi dest kiriye; ji helalî an jî ji heramî bi dest kiriye!"*

(B2083 Buxarî, Buyû', 23)



٩٥٩- عَنْ أَبِى الْحَوْرَاءِ السَّعْدِيِّ قَالَ: قُلْتُ لِلْحَسَنِ بْنِ عَلِيٍّ ﵁ : مَا حَفِظْتَ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ؟ قَالَ حَفِظْتُ مِنْهُ "دَعْ مَا يَرِيبُكَ إِلَى مَا لاَ يَرِيبُكَ."

# MILKIYET
## HEQÊ MILKIYETÊ HEQEKE FITRÎ YE

٩٦٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَأْخُذُ أَحَدٌ شِبْرًا مِنَ الأَرْضِ بِغَيْرِ حَقِّهِ، إِلاَّ طَوَّقَهُ اللَّهُ إِلَى سَبْعِ أَرَضِينَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



٩٦١- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ، عَنْ أَبِيهِ: ذَكَرَ النَّبِيَّ ﷺ قَعَدَ عَلَى بَعِيرِهِ وَأَمْسَكَ إِنْسَانٌ بِخِطَامِهِ... قَالَ: "فَإِنَّ دِمَاءَكُمْ وَأَمْوَالَكُمْ وَأَعْرَاضَكُمْ بَيْنَكُمْ حَرَامٌ كَحُرْمَةِ يَوْمِكُمْ هَذَا، فِى شَهْرِكُمْ هَذَا، فِى بَلَدِكُمْ هَذَا..."



٩٦٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﵄ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ يَحْلُبَنَّ أَحَدٌ مَاشِيَةَ امْرِئٍ بِغَيْرِ إِذْنِهِ، أَيُحِبُّ أَحَدُكُمْ أَنْ تُؤْتَى مَشْرُبَتُهُ فَتُكْسَرَ خِزَانَتُهُ، فَيُنْتَقَلَ طَعَامُهُ؟ فَإِنَّمَا تَخْزُنُ لَهُمْ ضُرُوعُ مَوَاشِيهِمْ أَطْعِمَاتِهِمْ، فَلاَ يَحْلُبَنَّ أَحَدٌ مَاشِيَةَ أَحَدٍ إِلاَّ بِإِذْنِهِ."



**959.** Ebu'l-Hewra es-Se'dî gotiye: "Min ji Hesen bin Elî (r.) pirsî: 'Ma tu çi ji Resûlê Xwedê hîn bûyî? Ewî got: 'Ez ji Resûlê Xwedê (s.) vê hîn bûme: *'Dev ji tişta te têxe şibhê de berde, berê xwe bide ya te naêxe şibhê de. Lewra rastbêjî huzûr û êmnayi ye, derewgotin şibhe ye."*

(N5714 Nesaî, Eşribe, 50)

# MILKIYET
## HEQÊ MILKIYETÊ HEQEKE FITRÎ YE

**960.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bostek erd bi neheqî bistîne, wê Xwedê Roja Qiyametê heft tebeqe erd li sitoyê wî bipêçe."*

(M4136 Muslim, Musaqat, 141)



**961.** Ebdurrehman bin Ebî Bekre (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) (di Heccetu'l-Weda'ê de) li ser deveha xwe rûnişt û mirovekî jî hevsarê wê girtibû... Piştre Resûlê xwedê (s.) got: *"(Gelî mirovan!) Bêguman xwîna we, malê we û namûsa we ji were heram e, û xwîn û mal û namûsa we mîna muqeddesiya vê rojê û vê mehê û vî bajarî muqeddes e..."*

(B67 Buxarî, Ilim, 9; M4384 Muslim, Qesame, 30)



**962.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes bê izn dewara kesekî nedûşe. Ma kesek ji we divê ku kesek dest dirêjiya cihê xwarin û vexwarina wî bike an jî dolaba wî bişkîne û tiştê tê de bibe? Dewar jî xwarin û vexwarina mirovan di gihanê xwe de muhafeze dikin. Bo vê yekê bila tu kes bê izn dewara kesekî nedûşe."*

(B2435 Buxarî, Luqata, 8)



٩٦٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو ﵄ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ."



٩٦٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا اسْتَأْذَنَ أَحَدُكُمْ أَخَاهُ أَنْ يَغْرِزَ خَشَبَةً فِى جِدَارِهِ فَلاَ يَمْنَعْهُ."

# ADABÊ BAZIRGANIYÊ
## BÊ HÎLE Û BI DURUSTÎ

٩٦٥- عَنْ أَبِى إِسْحَاقَ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا عَبْدِ اللَّهِ الْجَدَلِيَّ يَقُولُ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ عَنْ خُلُقِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَتْ: لَمْ يَكُنْ فَاحِشًا وَلاَ مُتَفَحِّشًا وَلَا صَخَّابًا فِى الأَسْوَاقِ وَلاَ يَجْزِى بِالسَّيِّئَةِ السَّيِّئَةَ وَلَكِنْ يَعْفُو وَيَصْفَحُ.



٩٦٦- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "الْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ. وَلاَ يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ بَاعَ مِنْ أَخِيهِ بَيْعًا، فِيهِ عَيْبٌ، إِلاَّ بَيَّنَهُ لَهُ."



٩٦٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّ عَلَى صُبْرَةِ طَعَامٍ، فَأَدْخَلَ يَدَهُ فِيهَا، فَنَالَتْ أَصَابِعُهُ بَلَلاً. فَقَالَ: "مَا هَذَا يَا صَاحِبَ الطَّعَامِ؟" قَالَ: أَصَابَتْهُ السَّمَاءُ يَا رَسُولَ اللَّهِ! قَالَ: "أَفَلاَ جَعَلْتَهُ فَوْقَ الطَّعَامِ كَيْ يَرَاهُ النَّاسُ، مَنْ غَشَّ فَلَيْسَ مِنِّى."



**963.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê di ber malê xwe de were kuştin ew şehîd e.*"

(B2480 Buxarî, Mezalim, 33; M361 Muslim, Îman, 226)



**964.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema birayê yekî ji we jê destûr xwest ku darekî di dûwarê wî de biçikêne bila men'a wî neke (destur bide)."*

(D3634 Ebû Dawûd, Qeda' (Akdiye), 31; T1353 Tirmizî, Ehkam, 18)

# ADABÊ BAZIRGANIYÊ
## BÊ HÎLE Û BI DURUSTÎ

**965.** Ebû Îshaq, gotiye: "Min ji Ebû Ebdîllah el-Cedelî (r.) bihîst digot: *'Min pirsa exlaqê Resûlê Xwedê (s.) ji Aîşe (r.) kir. Ewê got: 'Resûlê Xwedê (s.) ne çêrker bû û ne jî devpîs bû, li sûka de bi dengbilindî qîr nedida, pêşberê xirabiyê xirabî nedikir, belê efû dikir û dibexşand.'*"

(T2016 Tirmizî, Birr we sile, 69)



**966.** 'Uqbe bin 'Amir (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Misilman birayê Misilmanî ye. Firotina malê eybdar bêbeyankirina eyba wî, ji Misilmanî re ne helal e.*"

(İM2246 Ibn Maceh, Tîcaret, 45)



**967.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) (carekî di sûka Medînê de digeriha) çû cem komek genim û destê xwe di nav re kir, tiliyên wî şil bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ey xwediyê genim! Ma ev çiye?"* Ewî jî got: "Baran lê bariye ey Resûlê Xwedê!" Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma wî çaxî ne lazim bû tu qismê şil bênê ser; de qene mirovan jî dîtiba? Kesê hîla bike ew ne ji min e."*

(M284 Muslim, Îman, 164)



٩٦٨- عَنْ قَيْسِ بْنِ أَبِى غَرَزَةَ فقَالَ: أَتَانَا النَّبِيُّ ﷺ وَنَحْنُ فِى السُّوقِ فَقَالَ: "إِنَّ هَذِهِ السُّوقَ يُخَالِطُهَا اللَّغْوُ وَالْكَذِبُ، فَشُوبُوهَا بِالصَّدَقَةِ."

# DEYN
## BARÊ KU MIROVÎ DIKE ESÎR

٩٦٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الْقَتْلُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ يُكَفِّرُ كُلَّ شَيْءٍ إِلاَّ الدَّيْنَ."



٩٧٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَنْظَرَ مُعْسِرًا أَوْ وَضَعَ لَهُ أَظَلَّهُ اللَّهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ تَحْتَ ظِلِّ عَرْشِهِ يَوْمَ لَا ظِلَّ إِلاَّ ظِلُّهُ."



٩٧١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَطْلُ الْغَنِيِّ ظُلْمٌ وَإِذَا أُتْبِعَ أَحَدُكُمْ عَلَى مَلِيءٍ فَلْيَتْبَعْ."



٩٧٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَخَذَ أَمْوَالَ النَّاسِ يُرِيدُ أَدَاءَهَا أَدَّى اللَّهُ عَنْهُ، وَمَنْ أَخَذَ يُرِيدُ إِتْلاَفَهَا أَتْلَفَهُ اللَّهُ."



**968.** Qeys bin Ebî Xereze (r.) gotiye: "Em li sûkê bûn, Resûlê Xwedê (s.) hate cem me û got: *"Li van sûka gotinên pûç û derew têne gotin. Vêca (sûka xwe) bi sedeqeyan paqij bikin."*"

(N3830 Nesaî, Eyman we nuzûr, 23; HM16235 Ibn Hanbel, IV, 7)

# DEYN
## BARÊ KU MIROVÎ DIKE ESÎR

**969.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirina di rêya Xwedê de, ji bilî deyn dibe kefaretê her tiştî."*

(M4884 Muslim, Îmare, 120)



**970.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê muhletê bide deyndareke destteng an jî wî ji deynê wî azade bike, wê Xwedê Roja Qiyametê ew roja ji bilî siha Wî tu sih tuneyî wî kesî bixe bin siha xwe de."*

(T1306 Tirmizî, Buyû', 67)



**971.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Derengxistina dewlemendî deynê xwe zilm e. Dema yek ji hewe (ji bo sitandina deynê xwe) hate hewalekirin bal keseke halxweş ve bila qebûl bike."*

(M4002 Muslim, Musaqat, 33; B2287 Buxarî, Hewalat, 1)



**972.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bi niyeta ku şûnde bizivirîne malê mirova sitand, wê Xwedê dana wî malî jê re muyesser bike. Belê kesê bi niyeta hederkirinê (û şûnde nede) sitandibe, wê Xwedê jî malê wî telef bike."*

(B2387 Buxarî, Îstîqrad, 2)



٩٧٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: ...قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ خِيَارَكُمْ أَحْسَنُكُمْ قَضَاءً."

# ŞIRÎKATÎ
## BEREKETA KIRINA KARÊ BI HEV RE

٩٧٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَتِ الأَنْصَارُ لِلنَّبِيِّ ﷺ : اُقْسِمْ بَيْنَنَا وَبَيْنَ إِخْوَانِنَا النَّخِيلَ، قَالَ: "لاَ"، فَقَالُوا: تَكْفُونَا الْمَئُونَةَ وَنُشْرِكُكُمْ فِى الثَّمَرَةِ، قَالُوا: سَمِعْنَا وَأَطَعْنَا.



٩٧٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَامَلَ أَهْلَ خَيْبَرَ بِشَطْرِ مَا يَخْرُجُ مِنْهَا مِنْ ثَمَرٍ أَوْ زَرْعٍ.



٩٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَفَعَهُ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَقُولُ: أَنَا ثَالِثُ الشَّرِيكَيْنِ مَا لَمْ يَخُنْ أَحَدُهُمَا صَاحِبَهُ، فَإِذَا خَانَهُ خَرَجْتُ مِنْ بَيْنِهِمْ."

**973.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman qenctirê hewe, ew kes e ku deynê xwe bi şiklek xweştir dide."*

(B2305 Buxarî, Wekalet, 5

# ŞIRÎKATÎ
## BEREKETA KIRINA KARÊ BI HEV RE

**974.** Ebû Huryre (r.) gotiye: "Ensariyan ji Resûlê Xwedê (s.) re gotin: 'Bexçeyê xurmê me li me û li birayên me (yên muhacir) leva bike.' Resûlê Xwedê (s.) got *'Na'* Vêca Ensariyan (ji Muhaciran re) gotin: 'Karê avdan û emareta/xwedîkirina bexçe hûn bigirin ser xwe û em ê jî we bikin şirîkê fêkî.' (Piştî ku Resûlê Xwedê ev erê kir, Ensarî û Muhaciran tev de) gotin: 'Me seh kir û me îtaet kir.'"

(B2325 Buxarî, Muzara'a, 5)



**975.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) ehlê Xeyberê di miqabilê mehsûlê fêkî an dexlê de yê ku ji Xeyberê derdikeve bi mirêbayî (nîvî) şuxulandin

(M3962 Muslim, Musaqat, 1)



**976.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê Teala dibêje: 'Heta yek ji du şirîka xayîntiya hevalê xwe neke, ez şirîkê wan yê siséya me (alîkariya wan dikim, ewan diparêzim) Lê dema yekî ji wan xayîntiya hevalê xwe kir, ez ji wan diveqetihim."*

(D3383 Ebû Dawûd, Buyû', 26)

# ÎCARE
## ‘EQDA KIRÊ

٩٧٧- عَنْ رَافِعِ بْنِ خَدِيجٍ قَالَ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "إِنَّمَا يَزْرَعُ ثَلاَثَةٌ: رَجُلٌ لَهُ أَرْضٌ فَهُوَ يَزْرَعُهَا، وَرَجُلٌ مُنِحَ أَرْضًا فَهُوَ يَزْرَعُ مَا مُنِحَ، وَرَجُلٌ اسْتَكْرَى أَرْضًا بِذَهَبٍ أَوْ فِضَّةٍ."



٩٧٨- حَدَّثَنَا كَثِيرُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ عَوْفٍ الْمُزَنِيُّ عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "... وَالْمُسْلِمُونَ عَلَى شُرُوطِهِمْ، إِلاَّ شَرْطًا حَرَّمَ حَلاَلاً أَوْ أَحَلَّ حَرَامًا."



٩٧٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لأَنْ يَمْنَحَ أَحَدُكُمْ أَخَاهُ أَرْضَهُ خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَأْخُذَ عَلَيْهَا كَذَا وَكَذَا" ﴿لِشَيْءٍ مَعْلُومٍ﴾.



٩٨٠- عَنْ سَعْدٍ قَالَ: كُنَّا نُكْرِى الأَرْضَ بِمَا عَلَى السَّوَاقِى مِنَ الزَّرْعِ وَمَا سَعِدَ بِالْمَاءِ مِنْهَا، فَنَهَانَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ ذَلِكَ، وَأَمَرَنَا أَنْ نُكْرِيَهَا بِذَهَبٍ أَوْ فِضَّةٍ.

# ÎCARE
## 'EQDA KIRÊ

**977.** Ji Rafi' bin Xedîc (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sê kes çandinê dikin: Kesê zeviyeka wî bi xwe heyî, ew wê tajû, kesê zeviyek hibeyê wî hatî kirin vêca ew wê zeviyê ji xwe re dike û kesê zeviyek bi zêr an bi zîv kirê kirî."*

(D3400 Ebû Dawûd, Buyû', 31)



**978.** Kesîr bin Ebdîllah bin 'Emr bin 'Ewf el-Muzenî (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Ji bilî şertê ku helalî heram an jî heramî helal dike wekî din Misilman li ser şertê xwe ne (mecbûrê pêkanînê ne)."*

(T1352 Tirmizî, Ehkam, 17)



**979.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Yek ji hewe zeviya xwe hibeyê birayê xwe bike, ji wî re xêrtir e ku (bi îcar) pêşber wê de evê û evê (ucreteke diyarkiri) bistîne."*"

(M3960 Muslim, Buyû', 122)



**980.** Se'd (bin Ebî Weqqas) gotiye: Se'd (bin Ebî Weqqas) gotiye: "Me zeviyê xwe pêşber ku dexlê li ber devê çeman çêdibe û bi ava wan tête avdan ji me re be dida kirê. Vêca Resûlê Xwedê (s.) men'a me ji vê kir û emrê me kir ku em pêşber zêr an zîv bidine kirê."

(D3391 Ebû Dawûd, Buyû', 30)

# KEFALET
## EWLEYÎ Û PIŞTEVANÎ

٩٨١- عَنِ ابْنِ عَبَّاس أَنَّ رَجُلاً لَزِمَ غَرِيمًا لَهُ بِعَشْرَةِ دَنَانِيرَ، فَقَالَ: وَاللَّهِ! ما أُفَارِقُكَ حَتَّى تَقْضِيَنِى أَوْ تَأْتِيَنِى بِحَمِيلٍ، قَالَ: فَتَحَمَّلَ بِهَا النَّبِيُّ ﷺ...



٩٨٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "... وَاللَّهُ فِي عَوْنِ الْعَبْدِ مَا كَانَ الْعَبْدُ فِي عَوْنِ أَخِيهِ..."



٩٨٣- عنْ أَبِى أُمَامَةَ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ فِى خُطْبَتِهِ، عَامَ حَجَّةِ الْوَدَاعِ "...اَلزَّعِيمُ غَارِمٌ، وَالدَّيْنُ مَقْضِيٌّ."

# WEKALET
## WEKÎL DI CIHÊ ESÎLÎ DE YE

٩٨٤- عَنْ أَنَسٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ اسْتَخْلَفَ ابْنَ أُمِّ مَكْتُومٍ عَلَى الْمَدِينَةِ مَرَّتَيْنِ.



# KEFALET
## EWLEYÎ Û PIŞTEVANÎ

**981.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî bi sitoyê kesekê ku deh dînaran deyndarê wî bû girt û jê re got: "Wellahî, heta tu deynê min nedî an jî kefîlekî neynî ez te naberdim." Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) bû kefîlê wî deynî."

(D3328 Ebû Dawûd, Buyû', 2)



**982.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Çi qeder ebd alîkariya birayê xwe bike, wê hew qeder Xwedê jî alîkariya wî bike...*"

(M6853 Muslim, Zikir, dua, tewbe we îstîxfar, 38)



**983.** Ebû Umame (r.) gotiye: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst di xutbeya Heccetu'l-Weda'ê de digot: "*... Kefîl mesûlê deynê (girtî ser xwe) ye û lazim e deyn were dayîn.*"

(T1265 Tirmizî, Buyû', 39)

# WEKALET
## WEKÎL DI CIHÊ ESÎLÎ DE YE

**984.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.), İbn Ummî Mektûm (r.) du cara li Medînê kiriye cihgirê (wekîlê) xwe.

(D2931 Ebû Dawûd, Xerac, fey' we îmare, 3; HM13031 Ibn Hanbel, III, 192)



٩٨٥- عَنْ عَوْفِ بْنِ مَالِكٍ... فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَلُومُ عَلَى الْعَجْزِ وَلَكِنْ عَلَيْكَ بِالْكَيْسِ فَإِذَا غَلَبَكَ أَمْرٌ فَقُلْ حَسْبِيَ اللَّهُ وَنِعْمَ الْوَكِيلُ."



٩٨٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: كَانَ الْفَضْلُ رَدِيفَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ، فَجَاءَتِ امْرَأَةٌ مِنْ خَثْعَمَ... فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنَّ فَرِيضَةَ اللَّهِ عَلَى عِبَادِهِ فِي الْحَجِّ أَدْرَكَتْ أَبِي شَيْخًا كَبِيرًا لاَ يَثْبُتُ عَلَى الرَّاحِلَةِ، أَفَأَحُجُّ عَنْهُ؟ قَالَ: "نَعَمْ" وَذَلِكَ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ.

# FAÎZ/RIBA
## XWEDÊ KIRÎN Û FIROTIN HELAL Û RIBA HERAM KIRIYE

٩٨٧- عَنْ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ تَبِيعُوا الدِّينَارَ بِالدِّينَارَيْنِ، وَلاَ الدِّرْهَمَ بِالدِّرْهَمَيْنِ."



٩٨٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "اجْتَنِبُوا السَّبْعَ الْمُوبِقَاتِ." قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَمَا هُنَّ؟ قَالَ: "الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ، وَقَتْلُ النَّفْسِ الَّتِي حَرَّمَ اللَّهُ إِلاَّ بِالْحَقِّ، وَأَكْلُ الرِّبَا، وَأَكْلُ مَالِ الْيَتِيمِ، وَالتَّوَلِّي يَوْمَ الزَّحْفِ، وَقَذْفُ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ الْغَافِلاَتِ."



**985.** Ji 'Ewf bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê Teala acizî û bêçarebûnê lome dike. Belê lazim e tu bi aqil bî. Dema tu di bin karekî de mayî (te nekarî pêkbînî) bêje: "Xwedê besî min e û çi qenc wekîl e."*

(D3627 Ebû Dawûd, Qeda' Eqkdiye), 28)



**986.** Ji Ebdullah bin Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku el-Fedl bin Ebbas li pişt Resûlê Xwedê suwar bû. Vêca pîrekeka ji qebîla Xes'em hat û got: "Ya Resûlê Xwedê! Ew hecca ku Xwedê li ser ebdên xwe ferz kirî, di wextekî ku bavê min pîr û kal bûyî de û nikare li ser suwariyê, xwe bigire rast hat. Ma ez dikarim ji dêl wî ve (wekaleten) heccê bikim?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Belê"*. Ev hadîse di Heccetu'l-Weda'ê de çêbûye.

(B1513 Buxarî, Hec, 1)

# FAÎZ/RIBA
## XWEDÊ KIRÎN Û FIROTIN HELAL Û RIBA HERAM KIRIYE

**987.** Ji Osman bin 'Effan (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dînarekî bi du dînaran û dirhemekî bi du dirheman nefiroşin."*

(M4058 Muslim, Musaqat, 78)



**988.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji wan heft gunehên mirovan dibine helakê dûr bêxin."* Gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma ew çi ne?" Got: *"Hebandina şirîka ji Xwedê re, sihir çêkirin, kuştina bi neheqî ya ku Xwedê heram kirî, faîzxwarin, xwarina malê yetîman, reva ji herbê û îftîra zînayê li jina mumin a haya wê ji tiştek tuneyî."*

(B2766 Buxarî, Wesaya, 23)



٩٨٩- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ آكِلَ الرِّبَا وَمُوكِلَهُ وَكَاتِبَهُ وَشَاهِدَيْهِ وَقَالَ: "هُمْ سَوَاءٌ."



٩٩٠- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الذَّهَبُ بِالذَّهَبِ، وَالْفِضَّةُ بِالْفِضَّةِ، وَالْبُرُّ بِالْبُرِّ، وَالشَّعِيرُ بِالشَّعِيرِ، وَالتَّمْرُ بِالتَّمْرِ، وَالْمِلْحُ بِالْمِلْحِ، مِثْلاً بِمِثْلٍ، يَدًا بِيَدٍ، فَمَنْ زَادَ أَوِ اسْتَزَادَ فَقَدْ أَرْبَى، الآخِذُ وَالْمُعْطِى فِيهِ سَوَاءٌ."



٩٩١- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا أَحَدٌ أَكْثَرَ مِنَ الرِّبَا إِلاَّ كَانَ عَاقِبَةُ أَمْرِهِ إِلَى قِلَّةٍ."

## MALÊ GELEMPERÎ
### HEQÊ SÊWIYÊ BÊ MÛ

٩٩٢- عَنْ ثَوْبَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ مَاتَ وَهُوَ بَرِىءٌ مِنْ [ثَلاَثٍ]: الْكِبْرِ وَالْغُلُولِ وَالدَّيْنِ، دَخَلَ الْجَنَّةَ."



**989.** Cabir (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) le'net li kesê ribayê dixwe û dide xwarin, li kesê ribayê dinivîsîne û li herdu şahidê wê aniye û gotiye: *"Ew tev (di guneh de) mîna hev in."*

(M4093 Muslim, Musaqat, 106)



**990.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zêr bi zêrî, zîv bi zîvî, genim bi genimî, ce bi ceyî, xurme bi xurme, xwê bi xwê wek hev û pêşin tête firotin. Kesê zêde bide an jî zêde bistîne bêguman ketiye faîzê de. Yê digire û yê dide di vê meselê de wek hev in."*

(M4064 Muslim, Musaqat, 82)



**991.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesekê ku bi rêya faîzê malê xwe zêde kirî û di dawiyê de malê wî hindik nebûyî tune ye."*

(İM2279 Ibn Maceh, Ticaret, 58)

# MALÊ GELEMPERÎ
## HEQÊ SÊWIYÊ BÊ MÛ

**992.** Ji Sewban (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji kibrê û ji xayîntiya bi malê xenîmetê û ji deynan (ji van siseyan) bêrî (paqij) bimire, wê biçe cennetê."*

(T1572 Tirmizî, Siyer, 21; İM2412 Ibn Maceh, Sedaqat, 12)



٩٩٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ بُرَيْدَةَ، عَنْ أَبِيهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنِ اسْتَعْمَلْنَاهُ عَلَى عَمَلٍ فَرَزَقْنَاهُ رِزْقًا فَمَا أَخَذَ بَعْد ذَلِكَ فَهُوَ غُلُولٌ."



٩٩٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَأْخُذُ أَحَدٌ شِبْرًا مِنَ الأَرْضِ بِغَيْرِ حَقِّهِ، إِلاَّ طَوَّقَهُ اللَّهُ إِلَى سَبْعِ أَرَضِينَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



٩٩٥- عَنْ عَدِيِّ بْنِ عَمِيرَةَ الْكِنْدِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنِ اسْتَعْمَلْنَاهُ مِنْكُمْ عَلَى عَمَلٍ، فَكَتَمَنَا مِخْيَطًا فَمَا فَوْقَهُ، كَانَ غُلُولاً يَأْتِي بِهِ يَوْمَ الْقِيَامَة."



٩٩٦- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: بَعَثَنِي رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِلَى الْيَمَنِ، فَلَمَّا سِرْتُ، أَرْسَلَ فِي أَثَرِي، فَرُدِدْتُ فَقَالَ: "أَتَدْرِي لِمَ بَعَثْتُ إِلَيْكَ؟ لاَ تُصِيبَنَّ شَيْئًا بِغَيْرِ إِذْنِي فَإِنَّهُ غُلُولٌ، وَمَنْ يَغْلُلْ يَأْتِ بِمَا غَلَّ يَوْمَ الْقِيَامَةِ. لِهَذَا دَعَوْتُكَ، فَامْضِ لِعَمَلِكَ."

**993.** Ebdullah bin Bureyde (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Pêxember (s.) gotiye: *"Kesê me pêşber ucretekî wezîfedarê karekî kiribe, ji bilî vê ucretê çi malê bistîne ew xayîntiya malê gelemperî ye."*

(D2943 Ebû Dawûd, Xerac, fey' ve îmare, 9-10)



**994.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bostek erd bi neheqî bistîne, wê Xwedê Roja Qiyametê heft tebeqe erd li sitoyê wî bipêçe."*

(M4136 Muslim, Musaqat, 141; B2452 Buxarî, Mezalim, 13)



**995.** 'Edî bin 'Emîre el-Kindî (r.) ji Resûlê Xwedê bihîstiye digot: *"Kesê me di karekî de wezîfedar kiribe, vêca miqdarê derziyekî û zêdetir tiştekî ji me veşêre, ew jê re dibe xayîntî û wê bi vê xayîntiyê were heşirkirin."*

(M4743 Muslim, Îmare, 30)



**996.** Muaz bin Cebel (r.) gotiye: 'Resûlê Xwedê (s.) ez şiyandim Yemenê. Dema ez bi rê ketim. Yek li pey min şiyand ez vegerandim. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma tu zanî çima min şiyande pey te? Bê izna min tiştekî nestêne! Lewra ev xayînti ye. Kesê xayîntiyê di malê gelemperî de bike, wê Roja Qiyametê bi wê xayîntiya xwe ve were. Iha ji bo vê min gazî te kir. Vêca here ser karê xwe."*

(T1335 Tirmizî, Ehkam, 8)

# RIŞWET
## YÊ DIDE JÎ YÊ DISTÊNE JÎ WÊ BIŞEWITE!

٩٩٧- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ شَفَعَ لأَخِيهِ بِشَفَاعَةٍ فَأَهْدَى لَهُ هَدِيَّةً عَلَيْهَا فَقَبِلَهَا فَقَدْ أَتَى بَابًا عَظِيمًا مِنْ أَبْوَابِ الرِّبَا."



٩٩٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: لَعَنَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ اَلرَّاشِى وَالْمُرْتَشِى فِى الْحُكْمِ.



٩٩٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَعْنَةُ اللَّهِ عَلَى الرَّاشِى وَالْمُرْتَشِى."



١٠٠٠- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. فَإِنَّ نَفْسًا لَنْ تَمُوتَ حَتَّى تَسْتَوْفِيَ رِزْقَهَا، وَإِنْ أَبْطَأَ عَنْهَا. فَاتَّقُوا اللَّهَ وَأَجْمِلُوا فِى الطَّلَبِ. خُذُوا مَا حَلَّ، وَدَعُوا مَا حَرُمَ."



١٠٠١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَأْتِى عَلَى النَّاسِ زَمَانٌ لاَ يُبَالِى الْمَرْءُ مَا أَخَذَ مِنْهُ، أَمِنَ الْحَلاَلِ أَمْ مِنَ الْحَرَامِ؟"

# RIŞWET
## YÊ DIDE JÎ YÊ DISTÊNE JÎ WÊ BIŞEWITE!

**997.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê mehdera birayekî xwe bike û ew birayê wî hediyekî bidiyê û ew jî wê hediyê qebûl bike, ewî deriyek mezin ji deriyê faîzê vekiriye."*

(D3541 Ebû Dawûd, Buyû' (Îcâre), 82; HM22606 Ibn Hanbel, V, 261)



**998.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) le'net li kesê di de'weyekî de rişwetê dide û li kesê distîne kiriye."

(T1336 Tirmizî, Ehkam, 9)



**999.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Le'neta Xwedê li ser wî kesî be ku rişwetê dide û rişwetê distîne."*

(ÎM2313 Ibn Maceh, Ehkam, 2)



**1000.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî mirovno! êşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Lewra bêguman dereng bimîne jî tu kes berî rizqê jê re hatî teqdîrkirin nexwe namire. Naxwe pêşberê Xwedê de bi teqwa bin (mesuliyeta xwe bizanibin) û di xwestinê de zêde neçin (mutedil bin). Tişta helal ji xwe re bibin û ya heram be xwe jê dûr bikin."*

(ÎM2144 Ibn Maceh, Tîcaret, 2)



**1001.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wê zemanek wisa were, mirov guh nade ka malê xwe ji ku derê bi dest kiriye; ji helalî an jî ji heramî bi dest kiriye!"*

(B2059 Buxarî, Buyû', 7)

# BAZARREŞÎ
## ISTISMARKIRINA DEMA TENG

١٠٠٢- كَانَ سَعِيدُ بْنُ الْمُسَيَّبِ يُحَدِّثُ؛ أَنَّ مَعْمَرًا قَالَ:قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”مَنِ احْتَكَرَ فَهُوَ خَاطِئٌ.“



١٠٠٣- ثَقُلَ مَعْقِلُ بْنُ يَسَارٍ فَدَخَلَ إِلَيْهِ عُبَيْدُ اللَّهِ بْنُ زِيَادٍ يَعُودُهُ... قَالَ: اسْمَعْ يَا عُبَيْدَ اللَّهِ، حَتَّى أُحَدِّثَكَ شَيْئًا لَمْ أَسْمَعْهُ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ مَرَّةً وَلَا مَرَّتَيْنِ، سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: ”مَنْ دَخَلَ فِي شَيْءٍ مِنْ أَسْعَارِ الْمُسْلِمِينَ لِيُغْلِيَهُ عَلَيْهِمْ، فَإِنَّ حَقًّا عَلَى اللَّهِ، تَبَارَكَ وَتَعَالَى، أَنْ يُقْعِدَهُ بِعُظْمٍ مِنَ النَّارِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ.“



١٠٠٤- عَنِ ابْنِ عُمَرَ، عَنْ النَّبِيِّ ﷺ : ”مَنْ احْتَكَرَ طَعَامًا أَرْبَعِينَ لَيْلَةً فَقَدْ بَرِئَ مِنْ اللَّهِ تَعَالَى، وَبَرِئَ اللَّهُ تَعَالَى مِنْهُ، وَأَيُّمَا أَهْلُ عَرْصَةٍ أَصْبَحَ فِيهِمْ امْرُؤٌ جَائِعٌ، فَقَدْ بَرِئَتْ مِنْهُمْ ذِمَّةُ اللَّهِ تَعَالَى.“



١٠٠٥- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : ”الْجَالِبُ مَرْزُوقٌ وَالْمُحْتَكِرُ مَلْعُونٌ.“

# BAZARREŞÎ
## ISTISMARKIRINA DEMA TENG

**1002.** Seîd bin el-Museyyeb (r.) gotiye: "Me'mer (bin Ebdîllah) dibêje: 'Resûlê Xwedê (s.) kerem kiriye: *'Kesê bazarreşiyê bike ew gunehkar e.'"'*

(M4122 Muslim, Musaqat, 129)



**1003.** Nexweşiya Me'qil bin Yesar lê giran bû. Vêca Ubeydullah bin Ziyad çû serdana wî. Me'qil, got: "Guh bide ey Ubeydullah! Ez ê ji te re hedîseka ku min ne carek ne du carî (belê zêdetir) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîsti bêjim. Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê ji bo fiyetê tişta biha bibe mudaxela bazara Misilmanan bike, heq e li ser Xwedê Tebareke we Teala ku Roja Qiyametê wî di agireke mezin de rûnêne.'"*

" (HM20579 Ibn Hanbel, V, 28)



**1004.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê zadê xwarinê çil rojî veşêre (nederêxe bazarê), bêguman ew ji Xwedê Teala û Xwedê Teala ji wî bêrî bûye. Heke li mirovên herêmekî bibe sibeh û di nav wan de keseke birçî hebe, bêguman ew ji hîmaya Xwedê Teala derketine."*

(HM4880 Ibn Hanbel, II, 32)



**1005.** Ji Umer bin el-Xettab (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê mal bîne bazarê, wê rizqê wî lê zêde bibe û kesê mal kom bike û bazarreşiyê bike le'netî ye."*

(İM2153 Ibn Maceh, Ticaret, 6)

# DIZÎ
## DIZÎKIRIN

١٠٠٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَزْنِي الزَّانِي حِينَ يَزْنِي وَهُوَ مُؤْمِنٌ، وَلاَ يَسْرِقُ حِينَ يَسْرِقُ وَهُوَ مُؤْمِنٌ، وَلاَ يَشْرَبُ الْخَمْرَ حِينَ يَشْرَبُ وَهُوَ مُؤْمِنٌ، ثُمَّ التَّوْبَةُ مَعْرُوضَةٌ بَعْدُ."



١٠٠٧- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنِ انْتَهَبَ فَلَيْسَ مِنَّا."



١٠٠٨- عَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدِ بْنِ عَمْرِو بْنِ نُفَيْلٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "... مَنْ سَرَقَ مِنَ الْأَرْضِ شِبْرًا طُوِّقَهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنْ سَبْعِ أَرَضِين."



١٠٠٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ قَاتَلَ دُونَ مَالِهِ فَقُتِلَ فَهُوَ شَهِيدٌ."

# DIZÎ
## DIZÎKIRIN

**1006.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zînaker di sifetê xwe yê mumin de zînayê nake. Diz, di sifetê xwe yê mumin de diziye nake. Ereqvexwer di sifetê xwe yê mumin de ereqê navexwe. Piştî vê deriyê tobê jê re vekiriye."*

(M208 Muslim, Îman, 104; B2475 Buxarî, Mezalim, 30)



**1007.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê talaniyê bike ew ne ji me ye."*

(T1601 Tirmizî, Siyer, 40)



**1008.** Ji Seîd bin Zeyd bin 'Emr bin Nufeyl (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Kesê bostek erd bidize, wê Xwedê Roja Qiyametê heft tebeqe erd li sitoyê wî bipêçe."*

(T1418 Tirmizî, Diyat, 21)



**1009.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê pêşber parastina malê xwe de were kuştin ew şehîd e."*

(N4089 Nesaî, Muharebe, 22; M361 Muslim, Îman, 226)

# QUMAR
## UMUR HEBAKIRIN

١٠١٠- عَنِ الْمِقْدَامِ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "مَا أَكَلَ أَحَدٌ طَعَامًا قَطُّ خَيْرًا مِنْ أَنْ يَأْكُلَ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ، وَإِنَّ نَبِيَّ اللَّهِ دَاوُدَ عَلَيْهِ السَّلاَمُ كَانَ يَأْكُلُ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ."



١٠١١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو: أَنَّ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنِ الْخَمْرِ وَالْمَيْسِرِ وَالْكُوبَةِ وَالْغُبَيْرَاءِ..."



١٠١٢- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ بَلَغَهَا أَنَّ أَهْلَ بَيْتٍ فِي دَارِهَا كَانُوا سُكَّانًا فِيهَا وَعِنْدَهُمْ نَرْدٌ فَأَرْسَلَتْ إِلَيْهِمْ لَئِنْ لَمْ تُخْرِجُوهَا لَأُخْرِجَنَّكُمْ مِنْ دَارِي وَأَنْكَرَتْ ذَلِكَ عَلَيْهِمْ.



١٠١٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... وَمَنْ قَالَ لِصَاحِبِهِ تَعَالَ أُقَامِرْكَ. فَلْيَتَصَدَّقْ."

# QUMAR
## UMUR HEBAKIRIN

**1010.** Ji Mîqdam (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu kesî ji keda destê xwe çêtir tuwî xwarin nexwariye. Resûlê Xwedê Dawud jî, ji keda destê xwe dixwar."*

(B2072 Buxarî, Buyû', 15)



**1011.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) ereq, qumar, tewla û ereqa garis heram kiriye.

(D3685 Ebû Dawûd, Eşribe, 5)



**1012.** Ji xanima Pêxember Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku xeber gihatiyê ku li cem hineke ku di taxa wê de disekinîn tewla heye. Vêca Aîşe (r.) xeber da wan kesan ku "heke hûn wê tewlê ji malê derneêxin ez ê we ji taxa xwe derêxim." Bi vî şiklî (Hz. Aîşe) pêşberê hereketa wan derket.

(MU1757 Muwatta', Ru'ya, 2)



**1013.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Kesê bêje hevalê xwe were ez ê bi te re qumar leyîzim (ji ber ku derî ji heramî re vekiriye dive poşman bibe) bila derhal sedeqe bide.*"

(B4860 Buxarî, Tefsîr, (Necm) 2)

# IFLAS
## MIFLISÊ HEQÎQÎ EW KES E KU SERMAYÊ AXÎRETÊ WINDA DIKE

١٠١٤- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: أُصِيبَ رَجُلٌ فِى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِى ثِمَارٍ ابْتَاعَهَا، فَكَثُرَ دَيْنُهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "تَصَدَّقُوا عَلَيْهِ" فَتَصَدَّقَ النَّاسُ عَلَيْهِ، فَلَمْ يَبْلُغْ ذَلِكَ وَفَاءَ دَيْنِهِ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِغُرَمَائِهِ: "خُذُوا مَا وَجَدْتُمْ، وَلَيْسَ لَكُمْ إِلاَّ ذَلِكَ."



١٠١٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِذَا أَفْلَسَ الرَّجُلُ، فَوَجَدَ الرَّجُلُ مَتَاعَهُ بِعَيْنِهِ، فَهُوَ أَحَقُّ بِهِ."



١٠١٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَتَدْرُونَ مَا الْمُفْلِسُ؟" قَالُوا: الْمُفْلِسُ فِينَا مَنْ لَا دِرْهَمَ لَهُ وَلَا مَتَاعَ، فَقَالَ: "إِنَّ الْمُفْلِسَ مِنْ أُمَّتِى، يَأْتِى يَوْمَ الْقِيَامَةِ بِصَلاَةٍ وَصِيَامٍ وَزَكَاةٍ، وَيَأْتِى قَدْ شَتَمَ هَذَا، وَقَذَفَ هَذَا، وَأَكَلَ مَالَ هَذَا، وَسَفَكَ دَمَ هَذَا، وَضَرَبَ هَذَا، فَيُعْطَى هَذَا مِنْ حَسَنَاتِهِ، وَهَذَا مِنْ حَسَنَاتِهِ، فَإِنْ فَنِيَتْ حَسَنَاتُهُ، قَبْلَ أَنْ يُقْضَى مَا عَلَيْهِ، أُخِذَ مِنْ خَطَايَاهُمْ فَطُرِحَتْ عَلَيْهِ، ثُمَّ طُرِحَ فِى النَّارِ."

# IFLAS
## MIFLISÊ HEQÎQÎ EW KES E KU SERMAYÊ AXÎRETÊ WINDA DIKE

**1014.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "Di dewra Resûlê Xwedê (s.) de afetê li fêkiyê zilamekî ku hêja bi darêve kirîbu da, sebep vêyekê gelekî deyndar bûbû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Xêrê li vî zilamî bikin."* Li ser vê yekê mirovan sedeqê xwe dane wî. Belê têra deynê wî nekir. Resûlê Xwedê (s.) gote mirovê deynê wan lê: *"Tişta gihate we bigirin û ji wî pê ve tiştek ji we re nîn e."*"

(M3981 Muslim, Musaqat, 18)



**1015.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema mirovekî iflas kir, vêca kesê deynê wî lê, malê xwe yê dayiyê li balê dît (bila bigire) ew zehftir musteheqqê malê xwe ye."*

(M3990 Muslim, Musaqat, 24)



**1016.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma hûn zanin miflis kî ye?"* Sehabiyan got: "Li gorî me miflis ew kesê ne perê wî ne jî malê wî heye." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ji ummeta min miflis ew kesê ku Roja Qiyametê bi nimêj û rojî û zikata xwe ve tê. Lêbelê dujûn kiriye vî, bêbextî li yê dî kiriye, malê filankesî xwariye, xwîna yek dîtir rijandiye û li yekê dîtir xistiye. Vêca xêrê xwe dide vî û dide yê dîtir. Heke xêrê wî têrê nekirin, gunehên wan kesan ji wan tête sitandin û dikevin ser gunehên wî de û pişt re tê avêtin di cehnemê de."*

(M6579 Muslim, Birr we sile, 59)

# MALÊ WINDABÛYÎ
## PÊLOXÊ AGIR YÊ DI DESTÊ DÎTÎ DE

١٠١٧- عَنْ مُطَرِّفِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ الشِّخِّيرِ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ضَالَّةُ الْمُسْلِمِ حَرَقُ النَّارِ."



١٠١٨- عَنْ عِيَاضِ بْنِ حِمَارٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ وَجَدَ لُقَطَةً فَلْيُشْهِدْ ذَا عَدْلٍ أَوْ ذَوَيْ عَدْلٍ وَلاَ يَكْتُمْ وَلاَ يُغَيِّبْ، فَإِنْ وَجَدَ صَاحِبَهَا فَلْيَرُدَّهَا عَلَيْهِ وَإِلاَّ فَهُوَ مَالُ اللَّهِ يُؤْتِيهِ مَنْ يَشَاءُ."



١٠١٩- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: رَخَّصَ لَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى الْعَصَا وَالْحَبْلِ وَالسَّوْطِ وَأَشْبَاهِهِ يَلْتَقِطُهُ الرَّجُلُ يَنْتَفِعُ بِهِ.



١٠٢٠- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ آوَى ضَالَّةً فَهُوَ ضَالٌّ، مَا لَمْ يُعَرِّفْهَا."

# MALÊ WINDABÛYÎ
## PÊLOXÊ AGIR YÊ DI DESTÊ DÎTÎ DE

**1017.** Muterrif bin Ebdîllah bin eş-Şixxîr (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Malê Misilmanî yê windabûyî, pêloxê agir e di destê kesê dîtî de."*

(İM2502 Ibn Maceh, Luqata, 1)



**1018.** Ji 'Iyad bin Hîmar (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê malekê windabûyî bibîne bila derhal yek an du kesên adil bixe şahid. Bila malê dîtî xef neke û neveşêre. Heke xwedanê wî malî dît bila lê bizivirêne. Heke nedît, ew malê Xwedê yê vî kesî ye ku Xwedê dayê."*

(D1709 Ebû Dawûd, Luqata, 1)



**1019.** Cabir bin Ebdîllah (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) destûr daye me ku em şiv, ta, qemçî û tiştên weke vana yên me li erdê dîtîn (ji xwere bigirin) bi kar bênin."

(D1717 Ebû Dawûd, Luqata, 1)



**1020.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bêyî ku îlan bike heywaneka windabûyî bixe nav heywanên xwe de, yê windabûyî ew bi xwe ye."*

(M4510 Muslim, Luqata, 12)

# HEQÊ HEYWANAN
## LI HER ZINDEYAN REHMET

١٠٢١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ إِنْسَانٍ قَتَلَ عُصْفُورًا فَمَا فَوْقَهَا بِغَيْرِ حَقِّهَا إِلاَّ سَأَلَهُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ عَنْهَا."

١٠٢٢- عَنْ سَهْلِ ابْنِ الْحَنْظَلِيَّةِ قَالَ: مَرَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِبَعِيرٍ قَدْ لَحِقَ ظَهْرُهُ بِبَطْنِهِ، قَالَ: "اتَّقُوا اللَّهَ فِي هَذِهِ الْبَهَائِمِ الْمُعْجَمَةِ فَارْكَبُوهَا وَكُلُوهَا صَالِحَةً."

١٠٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: ..."فِي كُلِّ كَبِدٍ رَطْبَةٍ أَجْرٌ."

١٠٢٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ تَتَّخِذُوا شَيْئًا فِيهِ الرُّوحُ غَرَضًا."

١٠٢٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ التَّحْرِيشِ بَيْنَ الْبَهَائِمِ.

# HEQÊ HEYWANAN
## LI HER ZINDEYAN REHMET

**1021.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi mirovê beytikekî an zindeyek jê mestir bi neheqî bikuje, mitleqa wê Xwedê hesabê wê jê bipirse."*

(N4354 Nesaî, Sayd we zeba'ih, 34)



**1022.** Ji Sehl bin el-Henzeliyye (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) li ber deveheka ku (ji nêza) zikê wê bi pişta wê ve zeliqayî re derbas bû got: *"Derbareyê van heywanên bêziman de ji Xwedê bitirsihin! Dema kêr suwarbûnê tên li wan suwar bibin û dema kêr xwarinê tên wan (ser jê bikin û) bixun."*

(D2548 Ebû Dawûd, Cihad, 44)



**1023.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi qenciya li zindeyek were kirin xêr e."*

(B2363 Buxarî, Musaqat, 9; M5859 Muslim, Selam, 153)



**1024.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu tişta zinde neêxin hedef."*

(M5059 Muslim, Sayd ve zeba'ih, 58)



**1025.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) men'a me kir ku em heywanan berdin hevûdu."

(T1708 Tirmizî Cihad, 30; D2562 Ebû Dawûd, Cihad, 51)

# HEYWANÊN GOŞTÊ WAN HELAL
## XWARINA HELALÎ Û XWE PARASTINA JI MIRARÎ

١٠٢٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ نَهَى عَنْ كُلِّ ذِي نَابٍ مِنَ السِّبَاعِ، وَعَنْ كُلِّ ذِي مِخْلَبٍ مِنَ الطَّيْرِ.



١٠٢٧- عَنْ سَلْمَانَ الْفَارِسِيِّ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنِ السَّمْنِ وَالْجُبْنِ وَالْفِرَاءِ، قَالَ: "الْحَلاَلُ مَا أَحَلَّ اللَّهُ فِي كِتَابِهِ. وَالْحَرَامُ مَا حَرَّمَ اللَّهُ فِي كِتَابِهِ. وَمَا سَكَتَ عَنْهُ فَهُوَ مِمَّا عَفَا عَنْهُ."



١٠٢٨- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ كَتَبَ الإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ. فَإِذَا قَتَلْتُمْ فَأَحْسِنُوا الْقِتْلَةَ. وَإِذَا ذَبَحْتُمْ فَأَحْسِنُوا الذَّبْحَ. وَلْيُحِدَّ أَحَدُكُمْ شَفْرَتَهُ، فَلْيُرِحْ ذَبِيحَتَهُ."



١٠٢٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَال: "أُحِلَّتْ لَنَا مَيْتَتَانِ وَدَمَانِ. فَأَمَّا الْمَيْتَتَانِ فَالْحُوتُ وَالْجَرَادُ. وَأَمَّا الدَّمَانِ، فَالْكَبِدُ وَالطِّحَالُ."



١٠٣٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِي مَاءِ الْبَحْرِ: "هُوَ الطَّهُورُ مَاؤُهُ الْحَلاَلُ مَيْتَتُهُ."

# HEYWANÊN GOŞTÊ WAN HELAL
## XWARINA HELALÎ Û XWE PARASTINA JI MIRARÎ

**1026.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) men'a xwarina (goştê) ajalên goştxwer û goştê teyrên xwedan pence kiriye."

(M4996 Muslim, Sayd we zeba'ih, 16)



**1027.** Selman (r.) gotiye: "Pirsa duhn, penîr û cilê çerm ji Resûlê Xwedê (s.) hate kirin. Ewî got: *'Helal ew e ku Xwedê di kitêba xwe de helal kiriye, heram jî ew e ku Xwedê di kitêba xwe de heram kiriye. Tişta ku di derheqê wê de tu hukm beyan nekirî ew ji tiştên mubah e.'*"

(İM3367 Ibn Maceh, Et'ime, 60; T1726 Tirmizî, Lîbas, 6)



**1028.** Şeddad bin Ews (r.) gotiye: "Ez ji Resûlê Xwedê (s.) hînê du tişta bûm. Ewî wiha kerem kir: *"Xwedê di her kar û barî de îhsan (sipehî çêkirin) ferz kiriye. Wextê we (ji ber sebebek meşrû) kuştin kir xweşik (bêîşkence) bikujin, wextê we (heywanek) ser jê kir xweşik ser jê bikin û (dema yekî ji we xwest heywanekî ser jê bike) bila kêra xwe tûj bike û heywana serjêkirî rihet bike.*'"

(İM3170 Ibn Maceh, Zeba'ih, 3; M5055 Muslim, Sayd we zeba'ih, 57)



**1029.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Du (heywanên) mirar û du xwîn ji me re helal bûne: Her diduyê mirar, masî û kuleh e. Her du xwîn, kezeba reş û fatereşk e."*

(İM3314 Ibn Maceh, Et'ime, 31)



**1030.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê behrê de gotiye: *"Ava wê paqij e û mirariyên wê helal in."*

(N4355 Nesaî, Sayd we Zeba'ih, 35)

# ADABÊN NÊÇÎRÊ

١٠٣١- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ ﷺ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقُلْتُ: إِنَّا قَوْمٌ نَتَصَيَّدُ بِهَذِهِ الْكِلاَبِ، فَقَالَ: "إِذَا أَرْسَلْتَ كِلاَبَكَ الْمُعَلَّمَةَ وَذَكَرْتَ اسْمَ اللَّهِ، فَكُلْ مِمَّا أَمْسَكْنَ عَلَيْكَ..."



١٠٣٢- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَنِ الصَّيْدِ. قَالَ: "إِذَا رَمَيْتَ سَهْمَكَ فَاذْكُرِ اسْمَ اللَّهِ، فَإِنْ وَجَدْتَهُ قَدْ قَتَلَ فَكُلْ، إِلاَّ أَنْ تَجِدَهُ قَدْ وَقَعَ فِي مَاءٍ، فَإِنَّكَ لاَ تَدْرِي، الْمَاءُ قَتَلَهُ أَوْ سَهْمُكَ."



١٠٣٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ "مَا مِنْ إِنْسَانٍ قَتَلَ عُصْفُورًا فَمَا فَوْقَهَا بِغَيْرِ حَقِّهَا إِلاَّ سَأَلَهُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ عَنْهَا." قِيلَ يَا رَسُولَ اللَّهِ وَمَا حَقُّهَا قَالَ "يَذْبَحُهَا فَيَأْكُلُهَا وَلَا يَقْطَعُ رَأْسَهَا يَرْمِي بِهَا."



١٠٣٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ:"لاَ تَتَّخِذُوا شَيْئًا فِيهِ الرُّوحُ غَرَضًا."



# ADABÊN NÊÇÎRÊ

**1031.** 'Edî bin Hatim (r.) gotiye: "Min (di derheqê nêçîrê de) ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî û got: "Em ew mirovin in bi van seyan/kuçikan nêçîrê dikin." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Dema te navê Xwedê anî û seyê xwe yê elimandî rê kir, tişta ku girtî bixwe."*

(B5487 Buxarî, Zeba'ih we sayd, 10)



**1032.** 'Edî bin Hatim (r.) gotiye: "Di derheqê nêçîrê de min pirsek ji Resûlê Xwedê (s.) kir. Ewî got: *"Dema te tîrê xwe avêt navê Xwedê bîne. Heke te dît hate kuştin ewê bixwe. Lêbelê heke te dît nêçîr ketiye avê de (nexwe). Lewra tu nizanî ka tîr ew kuştiye an jî di avê de xeniqiye."*

(M4982 Muslim, Sayd we zeba'ih, 7)



**1033.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi mirovê beytikekî an zindeyek jê mestir bi neheqî bikuje, mitleqa wê Xwedê hesabê wê jê bipirse. Hate gotin: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma çûk bi çi heqî tête kuştin?' Got: '(Nîçirvan) wê çûkê ser jê ke û bixwe û (dema) serê wê jê kir serê wê navêje (derdoran)."*

N4354 Nesaî, Sayd we Zeba'ih, 34



**1034.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tu tişta zinde neêxin hedef."*

(M5059 Muslim, Sayd we zeba'ih, 58)



١٠٣٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِى مَاءِ الْبَحْرِ: "هُوَ الطَّهُورُ مَاؤُهُ الْحَلاَلُ مَيْتَتُهُ."

# MÎRAS Û WESIYET
## NEQLANDINA MILKIYETÊ

١٠٣٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اقْسِمُوا الْمَالَ بَيْنَ أَهْلِ الْفَرَائِضِ عَلَى كِتَابِ اللَّهِ..."



١٠٣٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ تَرَكَ مَالاً فَلِوَرَثَتِهِ، وَمَنْ تَرَكَ كَلاًّ فَإِلَيْنَا."



١٠٣٨- عَنْ عَمْرِو بْنِ خَارِجَةَ قَالَ: خَطَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَعْطَى كُلَّ ذِى حَقٍّ حَقَّهُ وَلاَ وَصِيَّةَ لِوَارِثٍ."



**1035.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê behrê de gotiye: *"Ava wê paqij e û mirariyên wê helal in."*

(N4355 Nesaî, Sayd we zeba'ih, 35)

# MÎRAS Û WESIYET
## NEQLANDINA MILKIYETÊ

**1036.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Malê mîrasê li wêrisan li gorî Kitêba Xwedê leva bikin..."*

(M4143 Muslim, Fera'id, 4; D2898 Ebû Dawûd, Fera'id, 7)



**1037.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê (mir) li dûv xwe mal hişt, ew mal ji wêrsên wî re ye. Kesê li dûv xwe wêrsên muhtacê xwedîkirinê (an jî deyn) hişt ew li ser me ye."*

(B6763 Buxarî, Fera'id, 25; M4161 Muslim, Fera'id, 17)



**1038.** 'Emr bin Xarîce (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) xutbeyek xwend û got: *"Bêguman Xwedê heqê her xudan heqî daye. Wesiyet ji warisan re nîn e."*

(N3671 Nesaî, Wesaya, 5)



١٠٣٩- عَنْ ابْنِ عُمَرَ ﵄: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا حَقُّ امْرِئٍ مُسْلِمٍ لَهُ شَيْءٌ يُوصِى فِيهِ يَبِيتُ لَيْلَتَيْنِ إِلَّا وَوَصِيَّتُهُ مَكْتُوبَةٌ عِنْدَهُ."



١٠٤٠- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَأَنْ يَتَصَدَّقَ الْمَرْءُ فِى حَيَاتِهِ بِدِرْهَمٍ خَيْرٌ لَهُ مِنْ أَنْ يَتَصَدَّقَ بِمِائَةٍ عِنْدَ مَوْتِهِ."

# TEZMÎNAT
## TELAFIYA XUSARÊ

١٠٤١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا رَأَيْتُ صَانِعَةَ طَعَامٍ مِثْلَ صَفِيَّةَ، أَهْدَتْ إِلَى النَّبِيِّ ﷺ إِنَاءً فِيهِ طَعَامٌ، فَمَا مَلَكْتُ نَفْسِى أَنْ كَسَرْتُهُ، فَسَأَلْتُ النَّبِيَّ ﷺ عَنْ كَفَّارَتِهِ فَقَالَ: "إِنَاءٌ كَإِنَاءٍ وَطَعَامٌ كَطَعَامٍ."



١٠٤٢- عَنْ أَنَسٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ اسْتَعَارَ قَصْعَةً فَضَاعَتْ فَضَمِنَهَا لَهُمْ.



١٠٤٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ :"لاَ ضَرَرَ وَلاَ إِضْرَارَ."



**1039.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne heq e ku bi Misilmanekî re tişteka wesiyet bike hebe û du şev derbas bibin û ew wesiyet nenivîsîbe."*

(B2738 Buxarî, Wesaya, 1; M4204 Muslim, Wesiyye, 1)



**1040.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirovek di saxiya xwe de dirhemekî sedeqe bide, çêtir e ku di ber mirinê de sed dirheman sedeqe bide."*

(D2866 Ebû Dawûd Wesaya, 3)

# TEZMÎNAT
## TELAFIYA XUSARÊ

**1041.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Min kesek weke Sefiyyeyê xweşik xwarin çêke nedîtiye. Ewê firaxeka ku tê de xwarin heyî şiyandibû ji Pêxember (s.) re. Min nekarî xwe û rabûm min (ji çavnebariya xwe) ew firax şikand. Piştre (poşmanbûm) min kefaretê (bedelê) wê firaxê ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî. Ewî got: *"Firaxek weke wê firaxê û xwarinek weke wê xwarinê."*

(N3409 Nesaî, Işratu'n-nisa, 4; HM25670 Ibn Hanbel, VI, 149)



**1042.** Ji Enes (bin Malik) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) firaxek ker kiribû. Vêca dema winda bû, Resûlê Xwedê (s.) tezmînata wê da.

(T1360 Tirmizî, Ehkam, 23)



**1043.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne zerer heye ne jî pêşber zererê zererdayîn heye."*

(ÎM2341 Ibn Maceh, Ehkam, 17)



١٠٤٤- عَنْ سَمُرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "عَلَى الْيَدِ مَا أَخَذَتْ حَتَّى تُؤَدِّيَ."



١٠٤٥- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَنْ تَطَبَّبَ، وَلَمْ يُعْلَمْ مِنْهُ طِبٌّ قَبْلَ ذَلِكَ، فَهُوَ ضَامِنٌ."

# KED
## XEBATA PÎROZ

١٠٤٦- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "ثَلاثٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ نَشَرَ اللَّهُ عَلَيْهِ كَنَفَهُ وَأَدْخَلَهُ الْجَنَّةَ: رِفْقٌ بِالضَّعِيفِ، وَالشَّفَقَةُ عَلَى الْوَالِدَيْنِ، وَالْإِحْسَانُ إِلَى الْمَمْلُوكِ."



١٠٤٧- عَنِ الْمَعْرُورِ قَالَ: لَقِيتُ أَبَا ذَرٍّ بِالرَّبَذَةِ وَعَلَيْهِ حُلَّةٌ وَعَلَى غُلاَمِهِ حُلَّةٌ فَسَأَلْتُهُ عَنْ ذَلِكَ. فَقَالَ: إِنِّي سَابَبْتُ رَجُلاً فَعَيَّرْتُهُ بِأُمِّهِ، فَقَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ: "يَا أَبَا ذَرٍّ! أَعَيَّرْتَهُ بِأُمِّهِ؟ إِنَّكَ امْرُؤٌ فِيكَ جَاهِلِيَّةٌ، إِخْوَانُكُمْ خَوَلُكُمْ، جَعَلَهُمُ اللَّهُ تَحْتَ أَيْدِيكُمْ، فَمَنْ كَانَ أَخُوهُ تَحْتَ يَدِهِ فَلْيُطْعِمْهُ مِمَّا يَأْكُلُ، وَلْيُلْبِسْهُ مِمَّا يَلْبَسُ، وَلاَ تُكَلِّفُوهُمْ مَا يَغْلِبُهُمْ، فَإِنْ كَلَّفْتُمُوهُمْ فَأَعِينُوهُمْ."



**1044.** Ji Semure (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê malê kesekî sitandibe, ew mesûlê wê ye heta ku bide xwedanê wê."*

(D3561 Ebû Dawûd, Buyû' (İcâre), 88; T1266 Tirmizî, Buyû', 39)



**1045.** 'Emr bin Şu'eyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ne hekîm be û rabe hekîmtiyê bike (û zererê li nexweşî bike) ew damin e(mesûl e)."*

(İM3466 Ibn Maceh, Tib, 16; N4834 Nesaî, Qesame, 40-41)

# KED
## XEBATA PÎROZ

**1046.** Ji Cabir (bin Ebdîllah) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sê tişt hene di kî de hebin, wê Xwedê ewî êxe bin hîmaya xwe de û wê wî kesî bike cennetê de: Miamelekirina bêhêzan bi nermî, miamela bi dêbavan re bi şefqet û miamela bi kole û xizmetkaran re bi qencî."*

(T2494 Tirmizî, Sifatu'l-qiyame, 48)



**1047.** Me'rûr (r.) dibêje: "Ez li Rebzeyê liqayî Ebû Zer (r.) hatim. Li ser wî bedlek hebû û li ser koleyê wî bedlek hebû (qiyafeta herduka eynî bû). Min sebebê vê ji Ebû Zer pirsî. Ewî got: 'Min û zilamekî xeber kirin hevûdû. Vêca min ew bi diya wî (ya ku zencî bû) sernivz kir. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Ya Ebû Zer! Ma tu wî bi dayîka wî sernivz dike? Nexwe tu hê jî zilamek ji wan zilaman î ku tê de eserê cahiliyetê heye. Birayên we yên kole, xizmetkarên we yên ku Xwedê kirîn emrê we de ne. Kesê ku di bin emrê wî de birayekî wî (yê kole) hebe, tişta dixwe bila bi wî jî bide xwarin û tişta li xwe dike bila li wî jî bike. Karên ji taqeta wan der bi wan nedin kirin. Heke we da kirin alîkariya wan bikin.'"*

(B30 Buxarî, Îman, 22)



١٠٤٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا صَنَعَ لأَحَدِكُمْ خَادِمُهُ طَعَامَهُ ثُمَّ جَاءَهُ بِهِ، وَقَدْ وَلِيَ حَرَّهُ وَدُخَانَهُ، فَلْيُقْعِدْهُ مَعَهُ، فَلْيَأْكُلْ، فَإِنْ كَانَ الطَّعَامُ مَشْفُوهًا قَلِيلاً، فَلْيَضَعْ فِى يَدِهِ مِنْهُ أُكْلَةً أَوْ أُكْلَتَيْنِ."



١٠٤٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَعْطُوا الْأَجِيرَ أَجْرَهُ، قَبْلَ أَنْ يَجِفَّ عَرَقُهُ."



١٠٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: قَالَ اللَّهُ تَعَالَى: "ثَلاَثَةٌ أَنَا خَصْمُهُمْ يَوْمَ الْقِيَامَةِ: رَجُلٌ أَعْطَى بِى ثُمَّ غَدَرَ، وَرَجُلٌ بَاعَ حُرًّا فَأَكَلَ ثَمَنَهُ، وَرَجُلٌ اسْتَأْجَرَ أَجِيرًا فَاسْتَوْفَى مِنْهُ وَلَمْ يُعْطِهِ أَجْرَهُ."

# DESTTÊNEDAN

## PARÊZBENDIYA CAN, MAL Û MEZELÊ

١٠٥١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ دَمُهُ وَمَالُهُ وَعِرْضُهُ."



**1048.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema xizmetkarê yekî ji hewe jê re xwarin çêkir, piştre jî anî jê re, -welhal ewî xizmetkarî germa xwarinê û duyê agirê wê tehemmul kiribû- bila wî jî bi xwe re rûnêne û bila ew jî pê re bixwe. Vêca heke xwarin hindik be, bila pariyek an du pariya bixe destê wî."*

(M4317 Muslim, Eyman, 42)



**1049.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hêj xwêhdana karkerî zuwa nebûyî ucreta wî bidine."*

(İM2443 Ibn Maceh, Ruhûn, 4)



**1050.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Teala gotiye: 'Sê kes hene Roja Qiyametê ez neyarê wan im: Kesê bi navê min soz da û soza xwe pêkneanî, kesê însanek azad firotî û perê wî xwarî û kesê karmendek şuxulandî û karê xwe pê dayî kirin piştre jî ucreta wî nedayiyê.'"*

(B2270 Buxarî, Îcare, 10)

# DESTTÊNEDAN
## PARÊZBENDIYA CAN, MAL Û MEZELÊ

**1051.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Xwîn û mal û namûsa her Misilmanî ji Misilmanê dîtir re heram e."*

(M6541 Muslim, Birr we sile, 32)



١٠٥٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "اجْتَنِبُوا السَّبْعَ الْمُوبِقَاتِ." قَالُوا: "يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَمَا هُنَّ؟" قَالَ: "الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ، وَقَتْلُ النَّفْسِ الَّتِى حَرَّمَ اللَّهُ إِلاَّ بِالْحَقِّ، وَأَكْلُ الرِّبَا، وَأَكْلُ مَالِ الْيَتِيمِ، وَالتَّوَلِّى يَوْمَ الزَّحْفِ، وَقَذْفُ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ الْغَافِلاَتِ."



١٠٥٣- عَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دِينِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دَمِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ وَمَنْ قُتِلَ دُونَ أَهْلِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ."



١٠٥٤- عَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ أَخَذَ شِبْرًا مِنَ الْأَرْضِ ظُلْمًا فَإِنَّهُ يُطَوَّقُهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنْ سَبْعِ أَرَضِينَ."



١٠٥٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ وَالْمُؤْمِنُ مَنْ أَمِنَهُ النَّاسُ عَلَى دِمَائِهِمْ وَأَمْوَالِهِمْ."

**1052.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji wan heft gunehên mirovan dibine helakê dûr bêxin."* Gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma ew çi ne?" Got: *"Hebandina şirîka ji Xwedê re, sihir çêkirin, kuştina bi neheqî ya ku Xwedê ew heram kirî, faîzxwarin, xwarina malê yetîman, reva ji herbê û îftîra zînayê li jina mumin a haya wê ji tiştek tuneyî."*

(B2766 Buxarî, Wesaya, 23)



**1053.** Seîd bin Zeyd (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihistiye digot: *"Kesê di ber malê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber dînê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber xwîn û canê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber malbata xwe de were kuştin şehîd e."*

(T1421 Tirmizî, Diyat, 21)



**1054.** Ji Seîd bin Zeyd (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê bostek erd bi neheqî bistîne, wê ew erd Roja Qiyametê bi heft tebeqeyan li sitoyê wî were pêçan."*

(M4135 Muslim, Musaqat, 140)



**1055.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Misilman ew kes e ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin. Mumin jî ew kes e ku mirov ji cîhet xwin û malê xwe ve lê ewle ne."*

(T2627 Tirmizî, Îman, 12)

# WEKHEVÎ
## MIROV MÎNA DIRANÊN ŞEH WEKHEV IN

١٠٥٦- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ امْرَأَةً سَرَقَتْ فَأُتِيَ بِهَا النَّبِيُّ ﷺ فَقَالُوا: مَنْ يَجْتَرِئُ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ إِلاَّ أَنْ يَكُونَ أُسَامَةَ. فَكَلَّمُوا أُسَامَةَ فَكَلَّمَهُ فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "يَا أُسَامَةُ إِنَّمَا هَلَكَتْ بَنُو إِسْرَائِيلَ حِينَ كَانُوا إِذَا أَصَابَ الشَّرِيفُ فِيهِمُ الْحَدَّ تَرَكُوهُ وَلَمْ يُقِيمُوا عَلَيْهِ وَإِذَا أَصَابَ الْوَضِيعُ أَقَامُوا عَلَيْهِ لَوْ كَانَتْ فَاطِمَةَ بِنْتَ مُحَمَّدٍ لَقَطَعْتُهَا."



١٠٥٧- عَنْ أَبِي نَضْرَةَ حَدَّثَنِي مَنْ سَمِعَ خُطْبَةَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي وَسَطِ أَيَّامِ التَّشْرِيقِ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ أَلَا إِنَّ رَبَّكُمْ وَاحِدٌ وَإِنَّ أَبَاكُمْ وَاحِدٌ أَلَا لَا فَضْلَ لِعَرَبِيٍّ عَلَى أَعْجَمِيٍّ وَلَا لِعَجَمِيٍّ عَلَى عَرَبِيٍّ وَلَا لِأَحْمَرَ عَلَى أَسْوَدَ وَلَا أَسْوَدَ عَلَى أَحْمَرَ إِلَّا بِالتَّقْوَى..."



١٠٥٨- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَقِيمُوا حُدُودَ اللَّهِ فِى الْقَرِيبِ وَالْبَعِيدِ وَلاَ تَأْخُذْكُمْ فِى اللَّهِ لَوْمَةُ لاَئِمٍ."

# WEKHEVÎ
## MIROV MÎNA DIRANÊN ŞEH WEKHEV IN

**1056.** Ji Aîşe (r.) hatîye ragihandin ku jinikekê dizî kir û ew jinik anîne cem Pêxember (s.). Mirovan ji hev re gotin: "Ne Usame be kesek cesareta mehderkirina vê jinkê li cem Resûlê Xwedê (s.) nikare bike." Vêca bi Usame re şitexilîn. Usame jî bi Resûlê Xwedê (s.) re şitexilî. Resûlê Xwedê (s.) got: "*Ya Usame! Sebebê helakbûna Îsraîliyan ev bû ku dema di nav wan de yekê xwedan hêzê mezin sûcek kiriba ew serbest dihiştin û ceza nedikirin, lê dema yekê zeîfê belengaz sûcek kiriba ew ceza dikirin. Heke (ya dizî kirî) Fatîma keça Muhemmed jî ba min ê destê wê jê bikira.*"

(N4899 Nesaî, Qet'u's-sarık, 6)



**1057.** Ebû Nedre, gotiye: "Sehabiyekî ku xutbeya Resûlê Xwedê (s.) ya ku di roja navîn ji rojê teşrîqê de dayî bihîstî, gotiye: 'Resûlê Xwedê (s.) got: '*Mirovno! Zanibin, bêguman Rebbê we yek e, bavê we yek e. Zanibin, ji bilî teqwatiyê Ereb ji Ecema, Ecem ji Ereba, kesê sor ji yê reş û kesê reş ji yê sor ne çêtir e...*"

(HM23885 Ibn Hanbel V, 411)



**1058.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Heddên Xwedê (cezayên qanûnî) li ser kesên nêzîk û dûr; herkesî tetbîq bikin. Nebe ku itaba kesekî, we ji vê vegerîne.*"

(ÎM2540 Ibn Maceh, Hudûd, 3)

# KOLETÎ Û AZADIYA ÎNSAN
## ÎNSAN AZAD TÊNE DINYAYÊ

١٠٥٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَعْتَقَ رَقَبَةً مُؤْمِنَةً، أَعْتَقَ اللَّهُ بِكُلِّ إِرْبٍ مِنْهَا إِرْبًا مِنْهُ مِنَ النَّارِ."



١٠٦٠- عَنِ الْمَعْرُورِ قَالَ: لَقِيتُ أَبَا ذَرٍّ بِالرَّبَذَةِ وَعَلَيْهِ حُلَّةٌ وَعَلَى غُلاَمِهِ حُلَّةٌ فَسَأَلْتُهُ عَنْ ذَلِكَ. فَقَالَ: إِنِّى سَابَبْتُ رَجُلاً فَعَيَّرْتُهُ بِأُمِّهِ، فَقَالَ لِىَ النَّبِيُّ ﷺ : "يَا أَبَا ذَرٍّ! أَعَيَّرْتَهُ بِأُمِّهِ؟ إِنَّكَ امْرُؤٌ فِيكَ جَاهِلِيَّةٌ، إِخْوَانُكُمْ خَوَلُكُمْ جَعَلَهُمُ اللَّهُ تَحْتَ أَيْدِيكُمْ، فَمَنْ كَانَ أَخُوهُ تَحْتَ يَدِهِ فَلْيُطْعِمْهُ مِمَّا يَأْكُلُ، وَلْيُلْبِسْهُ مِمَّا يَلْبَسُ، وَلاَ تُكَلِّفُوهُمْ مَا يَغْلِبُهُمْ، فَإِنْ كَلَّفْتُمُوهُمْ فَأَعِينُوهُمْ."



١٠٦١- عَنْ سَعِيدِ بْنِ زَيْدٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ قُتِلَ دُونَ مَالِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دِينِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ دَمِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ، وَمَنْ قُتِلَ دُونَ أَهْلِهِ فَهُوَ شَهِيدٌ."



# KOLETÎ Û AZADIYA ÎNSAN
## ÎNSAN AZAD TÊNE DINYAYÊ

**1059.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê koleyek mumin azad bike, wê Xwedê pêşber her ezayekê wî koleyî ezayeke wî kesî ji cehnemê azad bike."*

(M3795 Muslim, 'Itq, 21)



**1060.** Me'rûr (r.) dibêje: "Ez li Rebzeyê liqayî Ebû Zer (r.) hatim. Li ser wî bedlek hebû û li ser koleyê wî bedlek hebû (qiyafeta herdukan eynî bû). Min sebebê vê ji Ebû Zer pirsî. Ewî got: "Min û zilamekî xeber kirin hevûdû. Vêca min ew bi diya wî (ya ku zencî bû) sernivz kir. Li servê yekê Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *"Ya Ebû Zer! Ma tu wî bi dayîka wî sernivz dikî? Nexwe tu hê jî zilamek ji wan zilaman î ku tê de eserê cahiliyetê heye. Birayên we yên kole, xizmetkarên we yê ku Xwedê kirîn emrê we de ne. Kesê ku di bin emrê wî de birayekî wî (yê kole) hebe, tişta dixwe bila bi wî jî bide xwarin û tişta li xwe dike bila li wî jî bike. Karên ji taqeta wan der bi wan nedin kirin. Heke we da kirin alîkariya wan bikin."*

(B30 Buxarî, Îman, 22)



**1061.** Seîd bin Zeyd (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihistiye digot: *"Kesê di ber malê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber dînê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber xwîn û canê xwe de were kuştin şehîd e, kesê di ber malbata xwe de were kuştin şehîd e."*

(T1421 Tirmizî, Diyat, 21)



١٠٦٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُؤْمِنُ مَنْ أَمِنَهُ النَّاسُ عَلَى دِمَائِهِمْ وَأَمْوَالِهِمْ."



١٠٦٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ دَمُهُ وَمَالُهُ وَعِرْضُهُ."

# AZADIYA DÎNÎ
## DI DÎN DE LÊZORKIRIN NÎN E

١٠٦٤- عَنْ أَبِي حَازِمٍ قَالَ أَخْبَرَنِي سَهْلٌ -رضي الله عنه- يَعْنِي ابْنَ سَعْدٍ- قَالَ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ خَيْبَرَ "...فَوَاللَّهِ لأَنْ يَهْدِيَ اللَّهُ بِكَ رَجُلاً خَيْرٌ لَكَ مِنْ أَنْ يَكُونَ لَكَ حُمْرُ النَّعَمِ."



١٠٦٥- عَنْ بَهْزِ بْنِ حَكِيمٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَقْبَلُ اللَّهُ مِنْ مُشْرِكٍ أَشْرَكَ بَعْدَ مَا أَسْلَمَ، عَمَلاً حَتَّى يُفَارِقَ الْمُشْرِكِينَ إِلَى الْمُسْلِمِينَ."



**1062.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Misilman ew kes e ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin. Mumin jî ew kes e ku mirov ji cîhet xwîn û malê xwe ve lê ewle ne."*

(T2627 Tirmizî, Îman, 12)



**1063.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Xwîn û mal û namûsa her Misilmanî ji Misilmanê dîtir re heram e."*

(M6541 Muslim, Birr we sile, 32)

# AZADIYA DÎNÎ
## DI DÎN DE LÊZORKIRIN NÎN E

**1064.** Ji Ebû Hazim (r.) hatiye rîwayetkirin ku Sehl bin Se'd (r.) jê re gotiye ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Xeyberê gotiye: "... *Ez sond dixwim bi Xwedê! Heke ku Xwedê bi wasîta te şexsekî tenê hîdayet bike, ji te re ji devehên sor çêtir e."*

(B3009 Buxarî, Cîhad, 143)



**1065.** Behz bin Hekîm (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta ji mişrikan neveqete û nevegere nav Misilmanan Xwedê emelê tu mişrikê piştî misilmanbûyî carek dî mişrikbûyî qebûl nake."*

(ÎM2536 Îbn Mace, Hudûd, 2)



١٠٦٦- عَنْ تَمِيمٍ الدَّارِيِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الدِّينُ النَّصِيحَةُ" قُلْنَا: لِمَنْ؟ قَالَ: "لِلَّهِ وَلِكِتَابِهِ وَلِرَسُولِهِ وَلأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ وَعَامَّتِهِمْ."



١٠٦٧- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "ثَلاَثٌ مَنْ كُنَّ فِيهِ وَجَدَ حَلاَوَةَ الْإِيمَانِ: أَنْ يَكُونَ اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَحَبَّ إِلَيْهِ مِمَّا سِوَاهُمَا، وَأَنْ يُحِبَّ الْمَرْءَ لاَ يُحِبُّهُ إِلاَّ لِلَّهِ، وَأَنْ يَكْرَهَ أَنْ يَعُودَ فِى الْكُفْرِ كَمَا يَكْرَهُ أَنْ يُقْذَفَ فِى النَّارِ."

# PARASTINA NESLÊ
## NIFŞEK BI RÛMET

١٠٦٨- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ عَنْ أَبِيهِ ذَكَرَ النَّبِيَّ ﷺ قَعَدَ عَلَى بَعِيرِهِ، وَأَمْسَكَ إِنْسَانٌ بِخِطَامِهِ أَوْ بِزِمَامِهِ... قَالَ: "فَإِنَّ دِمَاءَكُمْ وَأَمْوَالَكُمْ وَأَعْرَاضَكُمْ بَيْنَكُمْ حَرَامٌ كَحُرْمَةِ يَوْمِكُمْ هَذَا، فِى شَهْرِكُمْ هَذَا، فِى بَلَدِكُمْ هَذَا..."



١٠٦٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ: مَالُهُ وَعِرْضُهُ وَدَمُهُ حَسْبُ امْرِئٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ."



**1066.** Ji Temîm ed-Darî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dîn semîmiyet e."* Me got: "Ji kî re?" Got: *"Ji Xwedê re, ji kitêba wî re, ji Resûlê Wî re, ji pêşîvanê misilmanan re û ji tev misilmanan re."*

(M196 Muslim, Îman, 95)



**1067.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê van her sê sifetan di xwe de kom bike bêguman wê tama şîraniya îmanê his bike: Ji herkesi zêdetir hez ji Xwedê û Resûlê Wî bike û wextê hez ji mirovekî kir tenê ji bo rizaya Xwedê hez jê bike û çawa naxwazê bikeve êgir de piştî Xwedê jê xilaskirî hewqasî nexwaze vegerê kufrê."*

(B16 Buxarî, Îman, 9)

# PARASTINA NESLÊ
## NIFŞEK BI RÛMET

**1068.** Ebdurrehman bin Ebî Bekre (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) (di Heccetu'l-Weda'ê de) li ser deveha xwe rûnişt û mirovekî jî hevsarê wê girtibû... Piştre Resûlê xwedê (s.) got: *"(Gelî mirovan!) Bêguman xwîna we, malê we û namûsa we ji we re heram e û xwîn û mal û namûsa we mîna muqeddesiya vê rojê û vê mehê û vî bajarî muqeddes e..."*

(B67 Buxarî, Ilim, 9; M4384 Muslim, Qesame, 30)



**1069.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwîn û mal û namûsa her Misilmanî ji Misilmanê dîtir re heram e. Ji xirabiyê besî mirovi ye ku birayê xwe yê Misilman kêm û nivz bibîne."*

(D4882 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



١٠٧٠- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ شَرِيكٍ قَالَ: شَهِدْتُ الْأَعْرَابَ يَسْأَلُونَ النَّبِيَّ ﷺ : أَعَلَيْنَا حَرَجٌ فِى كَذَا؟ أَعَلَيْنَا حَرَجٌ فِى كَذَا؟ فَقَالَ [لَهُمْ]: "عِبَادَ اللَّهِ وَضَعَ اللَّهُ الْحَرَجَ إِلاَّ مَنِ اقْتَرَضَ مِنْ عِرْضِ أَخِيهِ شَيْئًا. فَذَاكَ الَّذِى حَرِجَ."



١٠٧١- عَنْ عَلْقَمَةَ قَالَ: بَيْنَا أَنَا أَمْشِى مَعَ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ فَقَالَ: "مَنِ اسْتَطَاعَ الْبَاءَةَ فَلْيَتَزَوَّجْ، فَإِنَّهُ أَغَضُّ لِلْبَصَرِ وَأَحْصَنُ لِلْفَرْجِ..."



١٠٧٢- أَخْبَرَنِى الْحَارِثُ بْنُ النُّعْمَانِ: سَمِعْتُ أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ يُحَدِّثُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "أَكْرِمُوا أَوْلاَدَكُمْ وَأَحْسِنُوا أَدَبَهُمْ"

# NESEB
## NASNAME Û XWENASÎ

١٠٧٣- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ دِعْوَةَ فِى الإِسْلاَمِ، ذَهَبَ أَمْرُ الْجَاهِلِيَّةِ، الْوَلَدُ لِلْفِرَاشِ وَلِلْعَاهِرِ الْحَجَرُ."



**1070.** Usame bin Şerîk (r.) dibêje: "Min dît Bedewiyan ji Resûlê Xwedê (s.) dipirsîn: 'Ma em vê bikin guneh e? Ma em filan tiştê bikin guneh e?' Resûlê Xwedê (s.) ji wan re got: *'Gelî ebdên Xwedê! Xwedê meşeqqet (li ser ebdên xwe) rakiriye. Belê kesê dev bavêje şeref û namûsa birayên xwe iha esil yê ketî guneh de ew e.'"*

(İM3436 Ibn Maceh, Tib, 1; D2015 Ebû Dawûd, Menasik, 87)



**1071.** 'Elqeme (r.) gotiye: "Ez carekî digel Ebdullah bi rê ve diçûm, Vêca got: 'Em digel Resûlê Xwedê (s.) bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji me re got: *'Kesê ji hewe îmkana zewacê hebe bila bizewice. Lewra zewac ji bo parastina çav ji nezera heram û ji bo muhafezekirina iffetê rêya herî baş e...'"*

(B1905 Buxarî, Sawm, 10; M3400 Muslim, Nîkah, 3)



**1072.** Haris bin Nu'man (r.) ji Enes bin Malik (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenciyê li zarokên xwe bikin û wan baş terbiye bikin."*

(İM3671 Ibn Maceh, Edeb, 3)

# NESEB
## NASNAME Û XWENASÎ

**1073.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di Îslamê de, heqê kesekî nîne ku zarokeka ne ji pîrekeka bin nîkaha wî de be ji xwe re îddîa bike. Hukmên ji Dewra Cahiliyetê mayî rabûne. Zarok yê xwediyê doşekê ye û tu heqê zinakerî li ser zarokê tune ye."*

(D2274 Ebû Dawûd, Telaq, 33-34)



١٠٧٤- عَنْ سَعْدٍ ﷺ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "مَنِ ادَّعَى إِلَى غَيْرِ أَبِيهِ وَهُوَ يَعْلَمُ أَنَّهُ غَيْرُ أَبِيهِ فَالْجَنَّةُ عَلَيْهِ حَرَام."



١٠٧٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "قَدْ أَذْهَبَ اللَّهُ عَنْكُمْ عُبِّيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَفَخْرَهَا بِالْآبَاءِ، مُؤْمِنٌ تَقِيٌّ وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ، وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَآدَمُ مِنْ تُرَابٍ."



١٠٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تَعَلَّمُوا مِنْ أَنْسَابِكُمْ مَا تَصِلُونَ بِهِ أَرْحَامَكُمْ، فَإِنَّ صِلَةَ الرَّحِمِ مَحَبَّةٌ فِى الْأَهْلِ مَثْرَاةٌ فِى الْمَالِ، مَنْسَأَةٌ فِى الْأَثَرِ."



١٠٧٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...وَمَنْ بَطَّأَ بِهِ عَمَلُهُ لَمْ يُسْرِعْ بِهِ نَسَبُهُ."

# NIJADPERESTÎ
## ZIHNIYETA CAHILIYETÊ YA BÊHNPÊKETÎ

١٠٧٨- عَنْ بِنْتِ وَاثِلَةَ بْنِ الْأَسْقَعِ أَنَّهَا سَمِعَتْ أَبَاهَا يَقُولُ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! مَا الْعَصَبِيَّةُ؟ قَالَ: "أَنْ تُعِينَ قَوْمَكَ عَلَى الظُّلْمِ."



**1074.** Ji Se'd (r.) hatiye ragigihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê îddîa kurîtiya keseke ku ne bavê wî ye bike û zane ku ew ne bavê wî ye, cennet jê re heram e."*

(B6766 Buxarî, Fera'id, 29)



**1075.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bê guman Xwedê xurûra Cahiliyetê û pesindana bi bav û kalan ji nav we rakir, vêca 'bawermendê mutteqî' û 'gunehkarê rûreş' hene. Mirov zarokên Adem in û Adem jî ji axê ye."*

(T3956 Tirmizî, Menaqib, 74)



**1076.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Neseba (sulaleya) xwe nas bikin; de qene hûn karibin sileê rehmê (huqûqê eqrebatiyê) pêkbînin. Lewra sileê rehm di nav eqrebayan de hezkirinê bi hêz dike, malî zêde dike û umur dirêj dike."*

(T1979 Tirmizî, Birr we sile, 49; HM8855 Ibn Hanbel, II, 374)



**1077.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Kesê emelê wî ew şûnde hiştibe, neseba wî ewî kesî pêş de nabe."*

(M6853 Muslim, Zikir we dua, 38)

# NIJADPERESTÎ
## ZIHNIYETA CAHILIYETÊ YA BÊHNPÊKETÎ

**1078.** Qîza Wasîle bin el-Esqa' ji bavê xwe bihîstiye digot: "Min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma esebiyet/nijadperestî çi ye?' Ewî got: '*Nijadperestî ew e ku tu alîkariya qewmê xwe di zilmê de bikî.*'"

(D5119 Ebû Dawûd, Edeb, 111-112)



١٠٧٩- عَنْ جُنْدَبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْبَجَلِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قُتِلَ تَحْتَ رَايَةٍ عُمِّيَّةٍ، يَدْعُو عَصَبِيَّةً، أَوْ يَنْصُرُ عَصَبِيَّةً، فَقِتْلَةٌ جَاهِلِيَّةٌ."



١٠٨٠- عَنْ جُبَيْرِ بْنِ مُطْعِمٍ؛ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَيْسَ مِنَّا مَنْ دَعَا إِلَى عَصَبِيَّةٍ، وَلَيْسَ مِنَّا مَنْ قَاتَلَ عَلَى عَصَبِيَّةٍ، وَلَيْسَ مِنَّا مَنْ مَاتَ عَلَى عَصَبِيَّةٍ."



١٠٨١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَطَبَ النَّاسَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَذْهَبَ عَنْكُمْ عُبِّيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَتَعَاظُمَهَا بِآبَائِهَا، فَالنَّاسُ رَجُلاَنِ: رَجُلٌ بَرٌّ تَقِيٌّ كَرِيمٌ عَلَى اللَّهِ، وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ هَيِّنٌ عَلَى اللَّهِ، وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَخَلَقَ اللَّهُ آدَمَ مِنْ التُّرَابِ..."

# ÇARESERIYA IXTILAFÊN HUQÛQÎ
## SILEHET HER DEM XÊRTIR E

١٠٨٢- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ، وَإِنَّكُمْ تَخْتَصِمُونَ إِلَيَّ، وَلَعَلَّ بَعْضَكُمْ أَنْ يَكُونَ أَلْحَنَ بِحُجَّتِهِ مِنْ بَعْضٍ فَأَقْضِي نَحْوَ مَا أَسْمَعُ، فَمَنْ قَضَيْتُ لَهُ بِحَقِّ أَخِيهِ شَيْئًا فَلاَ يَأْخُذْهُ، فَإِنَّمَا أَقْطَعُ لَهُ قِطْعَةً مِنَ النَّارِ."



**1079.** Ji Cundub bin Ebdîllah el-Becelî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di bin alaya qewmek ji rê derketî de nijadperestiyê bihebîne an jî destekê bide nijadperestiyekê û were kuştin, mirina wî kesî weke mirina ehlê cahiliyyetê ye."*

(M4792 Muslim, Îmare, 57)



**1080.** Ji Cubeyr bin Mut'im (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê gazî nîjadperestiyê bike, ew ne ji me ye. Kesê di rêya de'wa nîjadperestiyê de herbê bike, ew ne ji me ye. Kesê di rêya de'wa nîjadperestiyê de bimire ew ne ji me ye."*

(D5121 Ebû Dawûd, Edeb, 111-112)



**1081.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Mekkeyê xutbeyek xwend û got: *"Gelî mirovan! Bê guman Xwedê xurûra Cahiliyetê û pesindana bi bav û kalan ji nav we rakir, vêca mirov du gurûb in: Qencê mutteqî yê li cem Xwedê biqedir û gunehkarê rûreş ê li cem Xwedê bêqîmet. Mirov zarokên Adem in û Xwedê Adem ji axê çêkiri ye..."*

(T3270 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 49; D5116 Ebû Dawûd, Edeb, 110-111)

# ÇARESERIYA IXTILAFÊN HUQÛQÎ
## SILEHET HER DEM XÊRTIR E

**1082.** Ji Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman ez beşer im. Hûn de'weyên xwe tênine ji min re. Vêca dibe hinek ji we ji hinekan hostatir bin di îfadekirina delîla xwe de û ez jî li gora bihîstina xwe hukum didim. Heke ez heqê birayê yekî ji we bidime kî ji we, bila negire. Lewra (bi vî hukmî) min qetek agir dayiyê."*

(B7169 Buxarî, Ehkam, 20)



١٠٨٣- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ قَالَ: كَتَبَ أَبِى –وَكَتَبْتُ لَهُ– إِلَى عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ وَهُوَ قَاضٍ بِسِجِسْتَانَ أَنْ لاَ تَحْكُمَ بَيْنَ اثْنَيْنِ وَأَنْتَ غَضْبَانُ فَإِنِّى سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لاَ يَحْكُمْ أَحَدٌ بَيْنَ اثْنَيْنِ وَهُوَ غَضْبَانُ."



١٠٨٤- عَنْ [عَبْدِ اللَّهِ] بْنِ أَبِى أَوْفَى قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "[إِنَّ] اللَّهَ مَعَ الْقَاضِى مَا لَمْ يَجُرْ. فَإِذَا جَارَ تَخَلَّى عَنْهُ وَلَزِمَهُ الشَّيْطَانُ."



١٠٨٥- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا حَكَمَ الْحَاكِمُ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَصَابَ فَلَهُ أَجْرَانِ، وَإِذَا حَكَمَ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَخْطَأَ فَلَهُ أَجْرٌ."



١٠٨٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ فِى خُطْبَتِهِ: "الْبَيِّنَةُ عَلَى الْمُدَّعِى وَالْيَمِينُ عَلَى الْمُدَّعَى عَلَيْهِ."

**1083.** Ji Ebdurrehman bin Ebî Bekrete (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Bavê min ji qadiyê Sicistanê Ubeydullah bin Ebî Bekrete re nameyek nivîsand – ji xwe ew name min jê re nivîsandibû- wiha gotibû: 'Dema tu enirî bî, di neqeba du kesan de hukum nede. Lewra min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst wiha digot: *'Bila yek ji we di dema enirî de di neqeba du kesan de hukum nede.'*"

(M4490 Muslim, Eqdiye, 16)



**1084.** Ji Ebdullah bin Ebî Ewfa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta neheqî nekiribe, Xwedê digel qadi ye. Lê dema neheqî kir, Xwedê dev jê diberde û şeytan digel wî dibe."*

(T1330 Tirmizî, Ehkam, 4)



**1085.** Ji 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku bihîst Resûlê Xwedê (s.) wiha digot: *"Dema ku hakim ictîhad bike û hukm bide vêca di içtîhada xwe de îsabet bike jê re du xêr hene, belê heke ictîhad (jibo bidestxistina heqiyê hewldan) kir û hukum da vêca di içtîhada xwe de xeta kir jê re xêrek tenê heye."*

(B7352 Buxarî, I'tîsam, 21; M4487 Muslim, Eqdiye, 15)



**1086.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) di xutbeyeka xwe de gotiye: *"Delîlanîn li ser de'wedarî ye û sondxwarin li ser kesê de'we lêhatîkirî ye."*

(T1341 Tirmizî, Ehkam, 12)

# ŞAHIDÎ
## WEZÎFEYEKE ÎNSANÎ

١٠٨٧- عَنِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِيرٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَلَكَ بَنُونَ سِوَاهُ." قَالَ: نَعَمْ. قَالَ: "فَكُلَّهُمْ أَعْطَيْتَ مِثْلَ هٰذَا." قَالَ: لاَ. قَالَ: "فَلاَ أَشْهَدُ عَلَى جَوْرٍ."



١٠٨٨- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَلاَ أُخْبِرُكُمْ بِخَيْرِ الشُّهَدَاءِ؟ الَّذِى يَأْتِى بِشَهَادَتِهِ قَبْلَ أَنْ يُسْأَلَهَا."



١٠٨٩- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ عَنْ أَبِيهِ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "أَلاَ أُنَبِّئُكُمْ بِأَكْبَرِ الْكَبَائِرِ؟" ثَلاَثًا. قُلْنَا: بَلَى يَا رَسُولَ اللَّهِ. قَالَ: "الْإِشْرَاكُ بِاللَّهِ، وَعُقُوقُ الْوَالِدَيْنِ." وَكَانَ مُتَّكِئًا فَجَلَسَ فَقَالَ: "أَلاَ وَقَوْلُ الزُّورِ وَشَهَادَةُ الزُّورِ، أَلاَ وَقَوْلُ الزُّورِ وَشَهَادَةُ الزُّورِ." فَمَا زَالَ يَقُولُهَا حَتَّى قُلْتُ: لاَ يَسْكُتُ.



١٠٩٠- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "لاَ تَجُوزُ شَهَادَةُ خَائِنٍ وَلاَ خَائِنَةٍ وَلاَ مَحْدُودٍ فِى الْإِسْلاَمِ وَلاَ ذِى غِمْرٍ عَلَى أَخِيهِ."



# ŞAHIDÎ
## WEZÎFEYEKE ÎNSANÎ

**1087.** Ji Nu'man bin Beşîr (r.) hatiye rîwayetkirin ku (dema bavê wî xwest miqdarek zêde mal bexşê wî bike û Resûlê Xwedê (s.) bixe şahid) Resûlê Xwedê (s.) jê pirsî : *"Ma ji bilî wî kurên te hene?"* got "Belê" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma te eynî miqdar bexşê wan tevan jî kiriye?"* Bavê min got: "Nexêr" Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ez şahidiya zilm û neheqiyê nakim."*

(M4183 Muslim, Hibe, 15)



**1088.** Ji Zeyd bin Xalid el-Cuhenî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ma ez qenctirê şahidan kî ye ji we re bêjim? Ew kes e ku hê şehdebûnî jê nehatî xwestin şahidiyê dike."*

(M4494 Muslim, Eqdiye, 19)



**1089.** Ebdurrehman bin Ebî Bekrete (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *"Gelo mezintîrîn gunehê kebaîr çi ye ji we re bêjim?"* Ev pirsa xwe sê cara tekrar kir. Me got: "Belê kerem ke ya Resûlê Xwedê!" Vêca Resûlê Xwedê got: *"Hebandina şirîkekî ji Xwedê re û nepêkanîna heqê dê û bavan (neheqiya li wan)"* Piştre Resûlê Xwedê (s.) paldayî bû, xwe rast kir û rûnişt û got: *"Şiyar bin! Derewkirin û şehdebûna derew (jî), Şiyar bin! Derewkirin û şehdebûna derew (jî)"* Resûlê Xwedê ew qeder tekrar kir min got: "Êdî hew disekine."

(B5976 Buxarî, Edeb, 6)



**1090.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Şehdebûna zilam û pîreka xayîntî li emanet dike û şehdebûna kesê cezayê hedek ji hedên Îslamê lê hatî kirin û şehdebûna kesê kîndariyê li birayê xwe dike ne caiz e."*

(ÎM2366 Ibn Maceh, Ehkam, 30)



١٠٩١- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ... رَدَّ شَهَادَةَ الْقَانِعِ لِأَهْلِ الْبَيْتِ وَأَجَازَهَا لِغَيْرِهِمْ.

# SOND
## ISPATA HEQÎQETÊ BI GOTINÊ

١٠٩٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنِ اقْتَطَعَ مَالَ امْرِئٍ مُسْلِمٍ بِيَمِينٍ كَاذِبَةٍ، لَقِيَ اللَّهَ وَهْوَ عَلَيْهِ غَضْبَانُ."



١٠٩٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ حَالِفًا فَلْيَحْلِفْ بِاللَّهِ أَوْ لِيَصْمُتْ."



١٠٩٤- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَوْ يُعْطَى النَّاسُ بِدَعْوَاهُمْ ادَّعَى نَاسٌ دِمَاءَ رِجَالٍ وَأَمْوَالَهُمْ وَلَكِنِ الْيَمِينُ عَلَى الْمُدَّعَى عَلَيْهِ."



١٠٩٥- إِنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "الْحَلِفُ مَنْفَقَةٌ لِلسِّلْعَةِ مَمْحَقَةٌ لِلْبَرَكَةِ."



**1091.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) şehdebûna xizmetkarî ji xwediyê malê re red kiriye û şehdebûna wî ji kesên dîtir re qebûl kiriye.

(D3600 Ebû Dawûd, Qeda', 16)

# SOND
## ISPATA HEQÎQETÊ BI GOTINÊ

**1092.** Ji Ebdulah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê bi sonda derew malê Misilmanekî ji xwe re bistîne, wê liqayî Xwedê were ku Xwedê jê enirî."*

(B7445 Buxarî, Tewhîd, 24)



**1093.** Ji Ebdullah (bin Umer) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê sond bixwe, bila bi navê Xwedê sond bixwe an jî bila dengê xwe neke."*

(B2679 Buxarî, Şehadat, 26)



**1094.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke hima tenê bi iddîakirinê heq werine dayîn bo mirovan, wî çaxî wê mirov de'wa xwîn û malê hinekên dîtir ji xwe re kiribana. Lêbelê sondxwarin li ser wî kesî ye ku de'we lê tê kirin."*

(İM2321 Ibn Maceh, Ehkam, 7)



**1095.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Sondxwarin, di kirîn-firotinê de kar tîne, belê bereketê jê dibe."*

(D3335 Ebû Dawûd, Buyû', 6; N4466 Nesaî, Buyû', 3)



١٠٩٦- عَنْ هَمَّامِ بْنِ مُنَبِّهٍ قَالَ: هَذَا مَا حَدَّثَنَا أَبُو هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَذَكَرَ أَحَادِيثَ مِنْهَا وَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "وَاللَّهِ لأَنْ يَلَجَّ أَحَدُكُمْ بِيَمِينِهِ فِى أَهْلِهِ آثَمُ لَهُ عِنْدَ اللَّهِ مِنْ أَنْ يُعْطِيَ كَفَّارَتَهُ الَّتِى فَرَضَ اللَّهُ."

# SUC Û CEZA
## QEBAHET Û MUEYYIDEYÊN WÊ

١٠٩٧- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرِو بْنِ الأَحْوَصِ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ فِى حَجَّةِ الْوَدَاعِ: "...أَلاَ لاَ يَجْنِى جَانٍ إِلاَّ عَلَى نَفْسِهِ. وَلاَ يَجْنِى وَالِدٌ عَلَى وَلَدِهِ وَلاَ مَوْلُودٌ عَلَى وَالِدِهِ..."



١٠٩٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ادْرَءُوا الْحُدُودَ عَنِ الْمُسْلِمِينَ مَا اسْتَطَعْتُمْ فَإِنْ كَانَ لَهُ مَخْرَجٌ فَخَلُّوا سَبِيلَهُ فَإِنَّ الإِمَامَ أَنْ يُخْطِئَ فِى الْعَفْوِ خَيْرٌ مِنْ أَنْ يُخْطِئَ فِى الْعُقُوبَةِ."



١٠٩٩- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تَعَافَوُا الْحُدُودَ قَبْلَ أَنْ تَأْتُونِى بِهِ فَمَا أَتَانِى مِنْ حَدٍّ فَقَدْ وَجَبَ."



**1096.** Hemmam bin Munebbih gotiye: "Ev çend hedîsên ku Ebû Hureyre (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) neqlê me kirin e." Piştre çend hedîs ji me re gotin. Di yekî ji wan de Resûlê Xwedê wiha gotiye: *"Wellahî, heke yek ji hewe israrê li ser pêkanîna sondeka di derheqê ehlê mala xwe kirî de bike (bêweko heke sonda xwe xira neke wê zerer bigihe wan), (bi sebep sond xirakirinê) ji dana kefareta ku Xwedê ferz kirî gunehtir e."*

(M4291 Muslim, Eyman, 26; B6625 Buxarî, Eyman we nuzûr, 1)

# SUC Û CEZA
## QEBAHET Û MUEYYIDEYÊN WÊ

**1097.** Suleyman bin 'Emr bin el-Ehwes, ji bavê xwe rîwayet kiriye ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye di Heccetu'l-Weda'ê de digot: *"Zanibin, mirov tenê ji sûcê wî bixwe kirî mesûl e. Ne bav ji ber sûcê kur ne jî kur ji ber sûcê bav nayê cezakirin..."*

(İM3055 Ibn Maceh, Menasik, 76)



**1098.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta hûn karibin cezayan ji Misilmanan dûr bikin. Heke hewe rêya dûrkirinê dît dev jê berdin. Lewra xeletiya rêvebirê (Misilman) di efûkirinê de çêtir e ji xeletiya wî di cezadanê de."*

(T1424 Tirmizî, Hudûd, 2)



**1099.** 'Emr bin Şueyb, bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di de'weyên ceza heq dikin de, berî hûn bînin ji min re hevûdu bibexşînin. Lewra çi de'waya ceza heq dike were cem min, êdî hukum kirin lazim dibe."*

(N4889 Nesaî, Qet'u's-sariq, 5)



١١٠٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "حَدٌّ يُعْمَلُ بِهِ فِى الْأَرْضِ خَيْرٌ لِأَهْلِ الْأَرْضِ مِنْ أَنْ يُمْطَرُوا أَرْبَعِينَ صَبَاحًا."



١١٠١- عَنْ أَبِى شُرَيْحٍ الْخُزَاعِيِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أُصِيبَ بِقَتْلٍ أَوْ خَبْلٍ فَإِنَّهُ يَخْتَارُ إِحْدَى ثَلاَثٍ إِمَّا أَنْ يَقْتَصَّ وَإِمَّا أَنْ يَعْفُوَ وَإِمَّا أَنْ يَأْخُذَ الدِّيَةَ فَإِنْ أَرَادَ الرَّابِعَةَ فَخُذُوا عَلَى يَدَيْهِ وَمَنِ اعْتَدَى بَعْدَ ذَلِكَ فَلَهُ عَذَابٌ أَلِيمٌ."

# MESÛLIYETÊN CIVAKÎ Û MUEYYÎDEYÊN HUQÛQÎ

١١٠٢- عَنْ وَابِصَةَ بْنِ مَعْبَدٍ الأَسَدِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "... الْبِرُّ مَا اطْمَأَنَّتْ إِلَيْهِ النَّفْسُ وَاطْمَأَنَّ إِلَيْهِ الْقَلْبُ، وَالْإِثْمُ مَا حَاكَ فِى النَّفْسِ وَتَرَدَّدَ فِى الصَّدْرِ وَإِنْ أَفْتَاكَ النَّاسُ وَأَفْتَوْكَ."



١١٠٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَجُلٌ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ : كَيْفَ لِى أَنْ أَعْلَمَ إِذَا أَحْسَنْتُ وَإِذَا أَسَأْتُ؟ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "إِذَا سَمِعْتَ جِيرَانَكَ يَقُولُونَ: قَدْ أَحْسَنْتَ، فَقَدْ أَحْسَنْتَ. وَإِذَا سَمِعْتَهُمْ يَقُولُونَ: قَدْ أَسَأْتَ، فَقَدْ أَسَأْتَ."



**1100.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Pêkanîna hedê sûcekê ku li ser rûyê erdê hatiye kirin, xêrtir e ji ehlê erdê re ku çil sibiha baran li wan bibare."*

(İM2538 Ibn Maceh, Hudûd, 3)



**1101.** Ji Ebû Şureyh el-Xuza'î (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê me'rûzê cînayetekî bûbe an jî hatibe birîndarkirin, ew (an jî weliyên wî) wê ji sê tiştan yekî bibijêre: An wê qîsasê bixwaze, an wê efû bike, an jî wê diyetê bistîne. Heke ya çarê xwest, nehêlin. Kesê ku piştî vê zêdegaviya bike ji hed der dikeve, jê re ezabek dijwar heye."*

(D4496 Ebû Dawûd, Diyat, 3)

# MESÛLIYETÊN CIVAKÎ Û MUEYYÎDEYÊN HUQÛQÎ

**1102.** Ji Wabîse bin Me'bed el-Esedî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Xêr ew e ku nefs pê rihet be û dil li ser bisekine. Guneh jî ew e ku di dil de nesekine û di singê de jî here û were (tereddudê çêke, nerihet bike) çendî mirov fetwayê bidin jî (guh li wan nedêre)."*

(DM2561 Darimî, Buyû', 2)



**1103.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Ez ê çewa zanibim ka min qencî kiriye an xirabî?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Heke te bihîst cîranê te dibêjin: Te qenc kiriye, (bizane) te qencî kiriye. Heke te ji wan bihîst dibêjin: Te xirabî kiriye, (bizane) ku te xirabî kiriye."*

(İM4223 Ibn Maceh, Zuhd, 25; HM3808 Ibn Hanbel, I, 402)



١١٠٤- قَالَ أَبُو سَعِيدٍ ...سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ رَأَى مِنْكُمْ مُنْكَرًا فَلْيُغَيِّرْهُ بِيَدِهِ فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِلِسَانِهِ فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِقَلْبِهِ وَذَلِكَ أَضْعَفُ الْإِيمَانِ."



١١٠٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَحْسَنَ أَحَدُكُمْ إِسْلاَمَهُ فَكُلُّ حَسَنَةٍ يَعْمَلُهَا تُكْتَبُ لَهُ بِعَشْرِ أَمْثَالِهَا إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْفٍ وَكُلُّ سَيِّئَةٍ يَعْمَلُهَا تُكْتَبُ له بِمِثْلِهَا."



١١٠٦- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ اجْعَلْنِى مِنَ الَّذِينَ إِذَا أَحْسَنُوا اسْتَبْشَرُوا وَإِذَا أَسَاءُوا اسْتَغْفَرُوا."

# KEFARET
## TELAFÎKIRINA XELETIYA

١١٠٧- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ مُصِيبَةٍ يُصَابُ بِهَا الْمُسْلِمُ إِلاَّ كُفِّرَ بِهَا عَنْهُ حَتَّى الشَّوْكَةِ يُشَاكُهَا."



**1104.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: '*Kesê ji hewe xirabiyekî bibîne û karibe bi destê xwe rast bike, bila bi destê xwe rast bike, heke nekarî bila bi zimanê xwe, heke nekarî bila bi dilê xwe. Ev jî lazimiya îmanê ya herî piçûk e.*"

(M177 Muslim, Îman, 78)



**1105.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Çi dema yekî ji we xweşik bi Îslamê emel kir, ji bedêla çi emelê qenc ku dike jê re bi qas emelê wî ji deh xêran heta heftsed xêran tête nivîsandin. Ji bedêla çi xirabiya ku dike jê re gunehek biqasî wê xirabiyê tête nivîsandin.*"

(B42 Buxarî, Îman, 31)



**1106.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) digot: "*Xwedayê min! Min bigerêne ji wan kesê ku dema qencî kirin keyfxweş dibin û dema xirabî kirin daxwaza efû û lêborînê dikin.*"

(İM3820 Ibn Maceh, Edeb, 57; HM26066 Ibn Hanbel, VI, 188)

# KEFARET
## TELAFÎKIRINA XELETIYA

**1107.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Çi musîbeta ku were serê Misilmanekî ku sitiryeka di laşê wî re çûyî jî be mitleqa wê Xwedê bixe kefaretê gunehên wî.*"

(M6565 Muslim, Birr we sile, 49)



١١٠٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُول: "الصَّلَوَاتُ الْخَمْسُ وَالْجُمُعَةُ إِلَى الْجُمُعَةِ وَرَمَضَانُ إِلَى رَمَضَانَ مُكَفِّرَاتٌ مَا بَيْنَهُنَّ إِذَا اجْتَنَبَ الْكَبَائِرَ."



١١٠٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَال... فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ حَلَفَ عَلَى يَمِينٍ فَرَأَى غَيْرَهَا خَيْرًا مِنْهَا فَلْيَأْتِهَا وَلْيُكَفِّرْ عَنْ يَمِينِهِ."



١١١٠- عَنْ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَفَّارَةُ الذَّنْبِ النَّدَامَةُ."

# CÎNAYET
## KUŞTINA ÎNSANEKÎ KUŞTINA ÎNSANAN TEVA YE

١١١١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لَزَوَالُ الدُّنْيَا أَهْوَنُ عَلَى اللَّهِ مِنْ قَتْلِ رَجُلٍ مُسْلِمٍ."



١١١٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تُقْتَلُ نَفْسٌ ظُلْمًا إِلاَّ كَانَ عَلَى ابْنِ آدَمَ الأَوَّلِ كِفْلٌ مِنْ دَمِهَا، لأَنَّهُ أَوَّلُ مَنْ سَنَّ الْقَتْلَ."



**1108.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pênc nimêj û du în û du Remezan, ji bilî gunehên mezin/kebaîr, kefaret in ji gunehên di neqeba wan de hatine kirin."*

(M552 Muslim, Teharet, 16)



**1109.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji bo kirina tiştekî sond bixwe, piştre tiştek dîtir ji wê xêrtir bibîne, bila wê bike û kefaretê sonda xwe bide."*

(M4271 Muslim, Eyman, 11)



**1110.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kefaretê gunehî poşmanbûn e."*

(HM2623 Ibn Hanbel, I, 289)

# CÎNAYET
## KUŞTINA ÎNSANEKÎ KUŞTINA ÎNSANAN TEVA YE

**1111.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Li cem Xwedê xirabûna dinyayê ji kuştina Misilmanekî siviktir e."*

(T1395 Tirmizî, Diyat, 7; N3992 Nesaî, Muharebe, 2)



**1112.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Çi mirovê bi neheqî were kuştin mitleqa behra kurê Adem yê ewil di wî gunehî de heye. Lewra kesê pêşî kuştin kirî ew e."*

(B3335 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 1; M4379 Muslim, Qesame, 27)



١١١٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ: مَالُهُ وَعِرْضُهُ وَدَمُهُ..."



١١١٤- عَنْ أَبِى بَكْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا تَوَاجَهَ الْمُسْلِمَانِ بِسَيْفَيْهِمَا فَقَتَلَ أَحَدُهُمَا صَاحِبَهُ فَالْقَاتِلُ وَالْمَقْتُولُ فِى النَّارِ." قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ! هَذَا الْقَاتِلُ فَمَا بَالُ الْمَقْتُولِ؟ قَالَ: "إِنَّهُ أَرَادَ قَتْلَ صَاحِبِهِ."



١١١٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ قَتَلَ نَفْسًا مُعَاهَدًا لَمْ يَرَحْ رَائِحَةَ الْجَنَّةِ، وَإِنَّ رِيحَهَا يُوجَدُ مِنْ مَسِيرَةِ أَرْبَعِينَ عَامًا."

# QISAS
## BERANBERIYA SUC Û CEZA

١١١٦- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْأَحْوَصِ قَالَ: حَدَّثَني أَبِى أَنَّهُ شَهِدَ حَجَّةَ الْوَدَاعِ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ وَذَكَّرَ وَوَعَظَ ثم قَالَ: "...أَلاَ لاَ يَجْنِى جَانٍ إِلاَّ عَلَى نَفْسِهِ وَلاَ يَجْنِى وَالِدٌ عَلَى وَلَدِهِ وَلاَ وَلَدٌ عَلَى وَالِدِهِ..."



**1113.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Xwîn û mal û namûsa her Misilmanî ji Misilmanê dîtir re heram e...*"

(D4882 Ebû Dawûd, Edeb, 35)



**1114.** Ji Ebû Bekrete (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "*Çaxa du Misilman bi şûrên xwe ketin pêşber hevudû û yekî hevalê xwe kuşt, yê mêrkuj û yê hatî kuştin herdû di cehnemêde ne. Sehabiyan gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Yê mêrkuj erê ma çima yê hatî kuştin di cehnemê de ye?" Resûlê Xwedê (s.) got: "Ewî jî dixwest hevalê xwe bikuje.*"

(N4127 Nesai, Muharebe, 29; B6875 Buxarî, Diyat, 2)



**1115.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Kesê miroveke zimmî (yê ku di nav axa Misilmanan de dijî û peymana ewleyiyê pê re hatî kirin) bikuje, ew bêhna cennetê nake. Welhal bêhna cennetê ji mesafa çil salî tê hîskirin.*"

(B6914 Buxarî, Diyat, 30)

# QISAS
## BERANBERIYA SUC Û CEZA

**1116.** Suleyman bin 'Emr bin el-Ehwes, ji bavê xwe rîwayet kiriye ku ew di Heccetu'l-Wda'ê de digel Resûlê Xwedê (s.) bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) hemd û senayê Xwedê kir, we'z û nesîhet dan, piştre jî got: "*Zanibin, mirov tenê ji sûcê wî bixwe kirî mesûl e. Ne bav ji ber sûcê kur ne jî kur ji ber sûcê bav nayê cezakirin...*"

(T3087 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 9)



١١١٧- عَنْ أَبِى شُرَيْحٍ الْخُزَاعِىِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أُصِيبَ بِقَتْلٍ أَوْ خَبْلٍ فَإِنَّهُ يَخْتَارُ إِحْدَى ثَلاَثٍ إِمَّا أَنْ يَقْتَصَّ وَإِمَّا أَنْ يَعْفُوَ وَإِمَّا أَنْ يَأْخُذَ الدِّيَةَ فَإِنْ أَرَادَ الرَّابِعَةَ فَخُذُوا عَلَى يَدَيْهِ وَمَنِ اعْتَدَى بَعْدَ ذَلِكَ فَلَهُ عَذَابٌ أَلِيمٌ."



١١١٨- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: أُتِىَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى قِصَاصٍ فَأَمَرَ فِيهِ بِالْعَفْوِ.



١١١٩- حَدَّثَنِى وَائِلُ بْنُ حُجْرٍ قَالَ: كُنْتُ عِنْدَ النَّبِيِّ ﷺ إِذْ جِىءَ بِرَجُلٍ قَاتِلٍ فِى عُنُقِهِ النِّسْعَةُ قَالَ: فَدَعَا وَلِيَّ الْمَقْتُولِ فَقَالَ: "أَتَعْفُو؟" قَالَ: لاَ. قَالَ: "أَفَتَأْخُذُ الدِّيَةَ؟" قَالَ: لاَ. قَالَ: "أَفَتَقْتُلُ؟" قَالَ: نَعَمْ. قَالَ: "اذْهَبْ بِهِ." فَلَمَّا وَلَّى قَالَ: "أَتَعْفُو؟" قَالَ: لاَ. قَالَ: "أَفَتَأْخُذُ الدِّيَةَ؟" قَالَ: لاَ. قَالَ "أَفَتَقْتُلُ؟" قَالَ: نَعَمْ. قَالَ: "اذْهَبْ بِهِ." فَلَمَّا كَانَ فِى الرَّابِعَةِ قَالَ: "أَمَا إِنَّكَ إِنْ عَفَوْتَ عَنْهُ يَبُوءُ بِإِثْمِهِ وَإِثْمِ صَاحِبِهِ." قَالَ: فَعَفَا عَنْهُ.

**1117.** Ji Ebû Şureyh el-Xuza'î (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê me'rûzê cînayetekî bûbe an jî hatibe birîndarkirin, ew (an jî weliyên wî) wê yekî ji sê tiştan bibijêre: An wê qîsasê bixwaze, an wê efû bike, an jî wê diyetê bistêne. Heke ya çarê xwest, nehêlin. Kesê piştî vê zêdegaviya bike ji hed derdikeve, jê re ezabek dijwar heye."*

(D4496 Ebû Dawûd, Diyat, 3)



**1118.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Carekî ji bo daxwaza qîsasê hinek hatin cem Pêxemer (s.) Vêca Resûlê Xwedê (s.) Emr/tewsiya efûkirinê kir."

(N4787 Nesaî, Qesame, 28-29)



**1119.** Wail bin Hucr (r.) dibêje: "Ez li cem Resûlê Xwedê (s.) bûm. Me hew dît zilamekê qatil yê di stoyê wî de qayîşek heyî anîn. Resûlê xwedê (s.) gazî weliyê kuştiyî kir û jê re got: *'Ma tê wî efû bikî?'* Got: 'Na', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma tê bedêlê xwîna wî bistênî?'* Got: 'Na', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma tê wî bikujî?'* Got: 'Erê', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ewî bibe.'* Dema zilamî pişta xwe da û çû, Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma tê wî efû bikî?"* Got: 'Na', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma tê bedêla xwîna wî bistênî?'* Got: 'Na', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ma tê wî bikujî?'* Got: 'Erê', Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ewî bibe.'* Çaxa çar cara ev hevpeyvîn dubare bû, Resûlê Xwedê (s.) got: *'Guh bidêre! Heke tu wî efû bikî, wê ew qatil hem gunehê xwe û hem gunehê kuştiyî bikişêne.'* Li ser vê yekê weliyê kuştî qatil efû kir."

(D4499 Ebû Dawûd, Diyat, 3)

# XWÎNDARÎ
## EDETA CAHILIYETÊ YA HUQÛQÊ NAS NAKE

١١٢٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَوَّلُ مَا يُقْضَى بَيْنَ النَّاسِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ، فِى الدِّمَاءِ."



١١٢١- عَنْ حُذَيْفَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَكُونُوا إِمَّعَةً تَقُولُونَ: إِنْ أَحْسَنَ النَّاسُ أَحْسَنَّا، وَإِنْ ظَلَمُوا ظَلَمْنَا، وَلَكِنْ وَطِّنُوا أَنْفُسَكُمْ، إِنْ أَحْسَنَ النَّاسُ أَنْ تُحْسِنُوا، وَإِنْ أَسَاءُوا فَلاَ تَظْلِمُوا."



١١٢٢- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرِو بْنِ الأَحْوَصِ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ فِى حِجَّةِ الْوَدَاعِ: "أَلاَ لاَ يَجْنِى جَانٍ إِلاَّ عَلَى نَفْسِهِ. لاَ يَجْنِى وَالِدٌ عَلَى وَلَدِهِ، وَلاَ مَوْلُودٌ عَلَى وَالِدِهِ."



١١٢٣- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ رُفِعَ إِلَيْهِ شَيْءٌ فِيهِ قِصَاصٌ إِلاَّ أَمَرَ فِيهِ بِالْعَفْوِ.

# XWÎNDARÎ
## EDETA CAHILIYETÊ YA HUQÛQÊ NAS NAKE

**1120.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Roja Qiyametê hukmê pêşî yê di neqeba însanan de were dayîn de'weyên xwînê ne."*

(M4381 Muslim, Qesame, 28; B6533 Buxarî, Riqaq, 48)



**1121.** Ji Huzeyfe bin el-Yeman (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nebin kêmşeref; ku hûn bêjin: 'Heke mirov qenciyê bikin em ê jî qenciyê bikin, heke zilm kirin em ê jî zilmê bikin. Belê nefsa xwe hîn bikin (ji xwe re bikin edet) ku heke însanan qencî kirin hûn jî qenciyê bikin û heke xirabî kirin hûn zilmê nekin.'"*

(T2007 Tirmizî, Birr we sile, 63)



**1122.** Suleyman bin 'Emr bin el-Ehwes, ji bavê xwe rîwayet kiriye ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye di Heccetu'l-Weda'ê de digot: *"Zanibin, mirov tenê ji sûcê wî bixwe kirî mesûl e. Ne bav ji ber sûcê kur ne jî kur ji ber sûcê bav nayê cezakirin..."*

(ÎM2669 Ibn Maceh, Diyat, 26; T3087 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 9)



**1123.** Enes bin Malik (r.) gotiye: *"Ez şahid nebûme ku de'weyeka tê de qîsas heyî û hatî ji Resûlê Xwedê (s.) re ku tewsiya efûkirinê nekiri-be."*

(D4497 Ebû Dawûd, Diyat, 3; N4788 Nesaî, Qesame, 28-29)

# INTÎHAR/XWEKUŞTIN
## SITANDINA CANÊ KU XWEDÊ BEXŞ KIRÎ

١١٢٤- حَدَّثَنَا جُنْدُبُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ... قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَانَ فِيمَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ رَجُلٌ بِهِ جُرْحٌ، فَجَزِعَ فَأَخَذَ سِكِّينًا فَحَزَّ بِهَا يَدَهُ، فَمَا رَقَأَ الدَّمُ حَتَّى مَاتَ، قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: بَادَرَنِى عَبْدِى بِنَفْسِهِ حَرَّمْتُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ."



١١٢٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ؓ : قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لَا يَتَمَنَّيَنَّ أَحَدُكُمْ الْمَوْتَ مِنْ ضُرٍّ أَصَابَهُ، فَإِنْ كَانَ لَا بُدَّ فَاعِلًا فَلْيَقُلْ: اللَّهُمَّ أَحْيِنِي مَا كَانَتْ الْحَيَاةُ خَيْرًا لِي، وَتَوَفَّنِي إِذَا كَانَتْ الْوَفَاةُ خَيْرًا لِي."



١١٢٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ؓ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ تَرَدَّى مِنْ جَبَلٍ فَقَتَلَ نَفْسَهُ، فَهُوَ فِى نَارِ جَهَنَّمَ يَتَرَدَّى فِيهِ خَالِدًا مُخَلَّدًا فِيهَا أَبَدًا، وَمَنْ تَحَسَّى سَمًّا فَقَتَلَ نَفْسَهُ، فَسَمُّهُ فِى يَدِهِ يَتَحَسَّاهُ فِى نَارِ جَهَنَّمَ خَالِدًا مُخَلَّدًا فِيهَا أَبَدًا، وَمَنْ قَتَلَ نَفْسَهُ بِحَدِيدَةٍ، فَحَدِيدَتُهُ فِى يَدِهِ، يَجَأُ بِهَا فِى بَطْنِهِ فِى نَارِ جَهَنَّمَ ﴿خَالِدًا﴾ مُخَلَّدًا فِيهَا أَبَدًا."



١١٢٧- عَنْ جَابِرِ بْنِ سَمُرَةَ قَالَ: أُتِيَ النَّبِيُّ ﷺ بِرَجُلٍ قَتَلَ نَفْسَهُ بِمَشَاقِصَ، فَلَمْ يُصَلِّ عَلَيْهِ.

# INTÎHAR/XWEKUŞTIN
## SITANDINA CANÊ KU XWEDÊ BEXŞ KIRÎ

**1124.** Ji Cundub bin Ebdillah (r.) ... hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav qewmên berî we de zilamek birîndar hebû. Tehemmula êşa birîna xwe nekir. Rabû kêrek girte destê xwe û pê destê xwe qut kir. Vêca xwîn nesekinî heta mir. Li ser vê yekê Xwedê Ezze we Celle got: 'Ebdê min di xusûsê canê xwe de ecele li min kir, min jî cennet jê re heram kir.'"*

(B3463 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 50)



**1125.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes ji hewe ji ber musîbeteka ku hatî serê wî mirinê nexwaze. Heke mitleqa lazim e bixwaze, bila wiha bêje: "Xwedayê min! Heta heyat ji min re xêrtir e heyata min îdame bike û heke mirin ji min re xêrtir be rihê min bistîne."*

(B5671 Buxarî, Merda, 19)



**1126.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê xwe ji çiyayekî bavêje xarê xwe bikuje, ew di cehnemê de ye, heta hetayê wê tê de be û wê her ji derên bilind bikeve xwarê. Kesê bi vexwarina jihrê xwe bikuje, wê di cehnemê de heta hetayê di destê wî de jihr heyî wê jihrê qurt qurtêne. Kesê bi hêsinekî (kêr, xencer û hwd.) xwe bikuje, wê hêsinê wî di destê wî de be di cehnemê de heta hetayê pê zikê xwe bidirêne."*

(B5778 Buxarî, Tib, 56)



**1127.** Ji Cabir bin Semure (r.) hatiye ragihandin ku cenazê zilamekî ku xwe bi tîra kuştî anîne cem Pêxember (s.). Belê Resûlê Xwedê (s.) li ser nimêj nekir.

(M2262 Muslim, Cena'iz, 107)

# ZINA
## WINDAKIRINA RÛMET Û IFFETÊ

١١٢٨- قَالَ أَبُو هُرَيْرَةَ ﷺ : إِنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَزْنِى [الزَّانِى] حِينَ يَزْنِى وَهْوَ مُؤْمِنٌ..."



١١٢٩- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَخْوَفَ مَا أَخَافُ عَلَى أُمَّتِى، عَمَلُ قَوْمِ لُوطٍ."



١١٣٠- عنْ سَهْلِ بْنِ سَعْدٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ يَضْمَنْ لِى مَا بَيْنَ لَحْيَيْهِ وَمَا بَيْنَ رِجْلَيْهِ أَضْمَنْ لَهُ الْجَنَّةَ."



١١٣١- فَقَالَ عَبْدُ اللَّهِ كُنَّا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ شَبَابًا لاَ نَجِدُ شَيْئًا، فَقَالَ لَنَا رَسُولُ اللَّهُ ﷺ : "يَا مَعْشَرَ الشَّبَابِ، مَنِ اسْتَطَاعَ الْبَاءَةَ فَلْيَتَزَوَّجْ، فَإِنَّهُ أَغَضُّ لِلْبَصَرِ وَأَحْصَنُ لِلْفَرْجِ، وَمَنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَعَلَيْهِ بِالصَّوْمِ، فَإِنَّهُ لَهُ وِجَاءٌ."



١١٣٢- عَنِ ابْنِ بُرَيْدَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِعَلِيٍّ: "يَا عَلِيُّ لاَ تُتْبِعِ النَّظْرَةَ النَّظْرَةَ، فَإِنَّ لَكَ الأُولَى وَلَيْسَتْ لَكَ الآخِرَةُ."

# ZINA
## WINDAKIRINA RÛMET Û IFFETÊ

**1128.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zinaker di sifetê xwe yê mumin de zinayê nake..."*

(B5578 Buxarî, Eşribe, 1)



**1129.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tirsa min a herî mezin ji ummeta min kirina emelê qewmê Lût e."*

(İM2563 Ibn Maceh, Hudûd, 12; T1457 Tirmizî, Hudûd, 24)



**1130.** Ji Sehl bin Se'd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê garantiya paraztina navbera her du lêvên xwe (ku ziman e) û navbera herdu lingên xwe (ku ewret e) bide min, ez ê jî garantiya cennetê bidimê."*

(B6474 Buxarî, Riqaq, 23)



**1131.** Ebdullah (bin Mesûd) (r.) gotiye: "Em çend xortên ku îmkana wan ya zewacê tuneyî li cem Resûlê Xwedê (s.) bûn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) ji me re got: *"Gelî xortan! Kesê ji hewe îmkana zewacê hebe bila bizewice. Lewra zewac ji bo parastina çav ji nezera heram û ji bo muhafezekirina iffetê rêya herî baş e..."*

(B5066 Buxarî, Nîkah, 3; T1081 Tirmizî, Nîkah, 1)



**1132.** İbn Bureyde (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) ji Elî re got: *"Ya Elî! Nezerê piştî nezerê neke! Lewra nezera pêşî (ji ber ne biqest e) ji te re efûbûyiye, lê ya diduyan ne heqê te ye."*

(D2149 Ebû Dawûd, Nîkah, 42-43; T2777 Tirmizî, Edeb, 28)

١١٣٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا أَوْلَى النَّاسِ بِعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَالْأَنْبِيَاءُ إِخْوَةٌ لِعَلَّاتٍ، أُمَّهَاتُهُمْ شَتَّى، وَدِينُهُمْ وَاحِدٌ."



١١٣٤- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلِي وَمَثَلُكُمْ كَمَثَلِ رَجُلٍ أَوْقَدَ نَارًا فَجَعَلَ الْجَنَادِبُ وَالْفَرَاشُ يَقَعْنَ فِيهَا وَهُوَ يَذُبُّهُنَّ عَنْهَا وَأَنَا آخِذٌ بِحُجَزِكُمْ عَنِ النَّارِ وَأَنْتُمْ تَفَلَّتُونَ مِنْ يَدِي."



١١٣٥- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَنْ حَدَّثَكَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَتَمَ شَيْئًا مِنَ الْوَحْيِ، فَلاَ تُصَدِّقْهُ، إِنَّ اللَّهَ تَعَالَى يَقُولُ: "يَا أَيُّهَا الرَّسُولُ بَلِّغْ مَا أُنْزِلَ إِلَيْكَ مِنْ رَبِّكَ وَإِنْ لَمْ تَفْعَلْ فَمَا بَلَّغْتَ رِسَالَتَهُ."



١١٣٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ مَثَلِي وَمَثَلَ الْأَنْبِيَاءِ مِنْ قَبْلِي كَمَثَلِ رَجُلٍ بَنَى بَيْتًا فَأَحْسَنَهُ وَأَجْمَلَهُ إِلَّا مَوْضِعَ لَبِنَةٍ مِنْ زَاوِيَةٍ فَجَعَلَ النَّاسُ يَطُوفُونَ بِهِ وَيَعْجَبُونَ لَهُ وَيَقُولُونَ هَلَّا وُضِعَتْ هَذِهِ اللَّبِنَةُ؟ قَالَ: فَأَنَا اللَّبِنَةُ وَأَنَا خَاتَمُ النَّبِيِّينَ."

**1133.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di dinyayê de û di axîretê de ji nav însanan kesê nêzîktirînê Îsa kurê Meryemê ez im. Pêxember birayên hev yên bavê wan yek û dayîka wan cuda ne. Dînê wan jî yek e."*

(B3443 Buxarî, Enbiya, 48)



**1134.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela hewe weke mesela zilamekî ku (bi şev) agirek pêxistiye, vêca perperok û kêzik tên xwe tavêjine êgir û ew zilam jî ewana dûr têxe. Ez, ji bo we ji agir biparêzim bi piştika we digirim, belê hûn xwe ji destê min tavêjin da xwe bêxine agir de."*

(M5958 Muslim, Feda'il, 19)



**1135.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: *"Kesê ji te re bêje: 'Pêxember (s.) hinek wehiy veşartiye (teblîx nekiriye)' jê bawer neke. Lewra Xwedê Teala dibêje: 'Ey Resûl! Wehya ji teref Rebbê te ve ji te re hatî teblîx bike. Heke tu vê nekî, te qasidiya Xwedê pêkneaniye.'"*

(Mâide, 5/67; B7531 Buxarî, Tewhîd, 46)



**1136.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela pêxemberên beriya min, weke mesela zilamekî ku xaniyek gelek xweşik û bêqusûr ava kiriye, belê cihê kerpîçekî hiştiye vala. Vêca mirovan jî bi heyranî û bi dilçûyînê derdora wî xaniyî re diçûn û dihatin. (Dema ew cihê vala didîtin) digotin: 'Ma çima cihê vî kerpîçî jî nehatiye dagirtin?'* Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ez ew kerpiç im û ez pêxemberê dawî me.'"*

(B3535 Buxarî, Menaqib, 18)

# HZ. ADEM Û HZ. NÛH
## DU BAVKALÊN ÎNSANIYETÊ

١١٣٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...فَجَحَدَ آدَمُ فَجَحَدَتْ ذُرِّيَّتُهُ وَنَسِيَ آدَمُ فَنَسِيَتْ ذُرِّيَّتُهُ وَخَطِئَ آدَمُ فَخَطِئَتْ ذُرِّيَّتُهُ."



١١٣٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَآدَمُ مِنْ تُرَابٍ."



١١٣٩- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "...فَكُلُّ مَنْ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ عَلَى صُورَةِ آدَمَ..."



١١٤٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: أَتَى النَّبِيَّ ﷺ أَعْرَابِيٌّ ...رَجَعَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَجَلَسَ فَقَالَ: إِنَّ نُوحًا عَلَيْهِ السَّلَامُ لَمَّا حَضَرَتْهُ الْوَفَاةُ دَعَا ابْنَيْهِ فَقَالَ: "إِنِّي قَاصِرٌ عَلَيْكُمَا الْوَصِيَّةَ آمُرُكُمَا بِاثْنَتَيْنِ وَأَنْهَاكُمَا عَنْ اثْنَتَيْنِ أَنْهَاكُمَا عَنْ الشِّرْكِ وَالْكِبْرِ وَآمُرُكُمَا بِلَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ فَإِنَّ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضَ وَمَا فِيهِمَا لَوْ وُضِعَتْ فِي كِفَّةِ الْمِيزَانِ وَوُضِعَتْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ فِي الْكِفَّةِ الْأُخْرَى كَانَتْ أَرْجَحَ وَلَوْ أَنَّ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضَ كَانَتَا حَلْقَةً فَوُضِعَتْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ عَلَيْهَا لَفَصَمَتْهَا أَوْ لَقَصَمَتْهَا وَآمُرُكُمَا بِسُبْحَانَ اللَّهِ وَبِحَمْدِهِ فَإِنَّهَا صَلَاةُ كُلِّ شَيْءٍ وَبِهَا يُرْزَقُ كُلُّ شَيْءٍ."

# HZ. ADEM Û HZ. NÛH
## DU BAVKALÊN ÎNSANIYETÊ

**1137.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Adem red kir, zurriyeta wî jî red kir. Adem ji bîr kir, zurriyeta wî jî ji bîr kir. Adem şaşîtî kir, zurriyeta wî jî şaşîtî kir.*"

(T3076 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 7)



**1138.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Mirov zarokên Adem in, Adem jî ji axê ye.*"

(T3956 Tirmizî, Menaqib, 74)



**1139.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "... *Herkes ê bikeve cennetê wê di sûretê Adem de bikevê...*"

(B3326 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 1)



**1140.** Ebdullah bin 'Emr (r.) gotiye: "Zilamek bedewî hate cem Resûlê Xwedê (s.) (şîkayeta sahabiyekî dikir ku mirovên bi esalet û yên bêesl ji hev naveqetîne.)... Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) zivirî û rûnişt û wiha got: "*Dema Nûh -eleyhisselam- kete ber mirinê de, gazî herdu kurên xwe kir û got: "Ez ê bi kurtî vê wesiyetê li hewe bikim: Ez emrê we bi du tişta dikim û du tişta ji we re qedexe dikim: Ez şirk û kibrê ji we re qedexe dikim. Ez emrê we dikim bi gotina 'La îlahe îllellah/ji bilî Ellah tu xweda tune ne'. Lewra heke erd, asîman û heyînên di neqeba wan de hemî bikevin şkevikeka teraziyê de û 'la îlahe îllellah' bikeve şkevika dîtir de wê 'la îlahe îllellah' girantir were. Heke erd û asîman xelekek bûna û 'la îlahe îllellah' bikeve ser wan, wê ew perçiqandibana an jî wê şeqitandibana. Ez emrê we bi gotina 'subhanellah we bî hemdîh/Xwedê ji her kêmasiyan dûr û bilind e û ew layîqê hemdê ye' jî dikim. Lewra ev duaya her tiştî ye û her tişt bi vê tê riziqkirin.*'"

(HM7101 Ibn Hanbel, II, 225)

# HZ. ÎBRAHÎM Û HZ. ÎSMAÎL
## EZMÛNA BAV Û KUR YA TEWHÎDÊ

١١٤١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ اتَّخَذَنِى خَلِيلاً كَمَا اتَّخَذَ إِبْرَاهِيمَ خَلِيلاً فَمَنْزِلِى وَمَنْزِلُ إِبْرَاهِيمَ فِى الْجَنَّةِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ تِجَاهَيْنِ..."



١١٤٢- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا خَيْرَ الْبَرِيَّةِ! فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "ذَاكَ إِبْرَاهِيمُ عَلَيْهِ السَّلاَمُ."



١١٤٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لِكُلِّ نَبِيٍّ وُلاَةً مِنَ النَّبِيِّينَ وَإِنَّ وَلِيِّىَ أَبِى وَخَلِيلُ رَبِّى..."



١١٤٤- عَنْ جَابِرٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "عُرِضَ عَلَيَّ الْأَنْبِيَاءُ ...وَرَأَيْتُ إِبْرَاهِيمَ [صَلَوَاتُ اللَّهِ عَلَيْهِ] فَإِذَا أَقْرَبُ مَنْ رَأَيْتُ بِهِ شَبَهًا صَاحِبُكُمْ يَعْنِى نَفْسَهُ..."

# HZ. ÎBRAHÎM Û HZ. ÎSMAÎL
## EZMÛNA BAV Û KUR YA TEWHÎDÊ

**1141.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman çawa ku Xwedê Îbrahîm ji xwe re kirî dost ez jî ji xwe re kirime dost. (Bo vê yekê) Roja Qiyametê di cennetê de cihê min û cihê Îbrahîm pêşberê hev in..."*

(ÎM141 Ibn Maceh, Sunnet, 11)



**1142.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Zilamek hate cem Pêxember (s.) û got: 'Ey xêrtirînê ehlê erdê!' Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ew Îbrahîm eleyhîsselam e'*"

(M6138 Muslim, Feda'il, 150)



**1143.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pêxemberek dostekî wî yê pêxember heye. Dostê min bavkalê min û dostê Rebbê min (Îbrahîm) e..."*

(T2995 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 3)



**1144.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Şeva Mîracê) pêxember hemî hatin nîşa kirin bo min ... Min Îbrahîm (es.) dît. Vêca çi bibînim! Min dît kesê zehftir dişibihiyê, hevalê hewe ye –qesta xwe dikir-."*

(M423 Muslim, Îman, 271)

# BAŞTIRÎNÊN QISETAN
## HESRETA YEQÛB Û IFFETA YÛSUF

١١٤٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أُعْطِيَ يُوسُفُ عَلَيْهِ الصَّلَاةُ وَالسَّلَامُ شَطْرَ الْحُسْنِ."

١١٤٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قِيلَ يَا رَسُولَ اللَّهِ مَنْ أَكْرَمُ النَّاسِ؟ قَالَ: "أَتْقَاهُمْ" قَالُوا لَيْسَ عَنْ هَذَا نَسْأَلُكَ. قَالَ: "فَيُوسُفُ نَبِيُّ اللَّهِ."

١١٤٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ فِي قَوْلِهِ لِرَسُولِهِ ﴿فَاسْأَلْهُ مَا بَالُ النِّسْوَةِ اللَّاتِي قَطَّعْنَ أَيْدِيَهُنَّ﴾ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَوْ كُنْتُ أَنَا لَأَسْرَعْتُ الْإِجَابَةَ وَمَا ابْتَغَيْتُ الْعُذْرَ."

١١٤٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْكَرِيمُ ابْنُ الْكَرِيمِ ابْنِ الْكَرِيمِ ابْنِ الْكَرِيمِ يُوسُفُ بْنُ يَعْقُوبَ بْنِ إِسْحَاقَ بْنِ إِبْرَاهِيمَ عَلَيْهِمِ السَّلَامُ."

# BAŞTIRÎNÊN QISETAN
## HESRETA YEQÛB Û IFFETA YÛSUF

**1145.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Nîvê sipehîtiyê Yûsuf (es.) wergirtiye."*

(HM14096 Ibn Hanbel, III, 287)



**1146.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: "Ya Resûlê Xwedê! Ma qenctirê însanan kî ye?" Got: *"Teqwatirê wan e."* Gotin: "Me ji te ev nepirsîbû." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Nebiyê Xwedê Yûsuf e."*

(B3490 Buxarî, Menaqib, 1)



**1147.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê gotina Yûsuf ji qasidê qiral re ya ku *'Jê (qiralî) bipirse, ma gelo rewşa wan jinikên destê xwe jê kirin çi bû?'* (Yûsuf, 12/50) de *'Heke ez bama min ê bilez de'weta qiralî qebûl kiriba û ez li mezeretan nedigeriham."*

( HM8535 Ibn Hanbel, II, 346)



**1148.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qencê kurê qencê kurê qencê kurê qenc Yûsuf kurê Yeqûb kurê Îshaq kurê Îbrahîm e, eleyhîmusselam."*

(B3390 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 19)

# HZ. MÛSA Û HZ. HARÛN
## DU XELEKEYÊN PÊXEMBERTIYÊ YÊN BIRA

١١٤٩- اِبْنُ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَرَرْتُ لَيْلَةَ أُسْرِيَ بِى عَلَى مُوسَى بْنِ عِمْرَانَ [عَلَيْهِ السَّلاَمُ] رَجُلٌ آدَمُ طُوَالٌ جَعْدٌ كَأَنَّهُ مِنْ رِجَالِ شَنُوءَةَ..."



١١٥٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ [رضي الله عنه] أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَدِمَ الْمَدِينَةَ فَوَجَدَ الْيَهُودَ صِيَامًا يَوْمَ عَاشُورَاءَ فَقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا هَذَا الْيَوْمُ الَّذِى تَصُومُونَهُ؟" قَالُوا: هَذَا يَوْمٌ عَظِيمٌ أَنْجَى اللَّهُ فِيهِ مُوسَى وَقَوْمَهُ وَغَرَّقَ فِرْعَوْنَ وَقَوْمَهُ فَصَامَهُ مُوسَى شُكْرًا فَنَحْنُ نَصُومُهُ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "فَنَحْنُ أَحَقُّ وَأَوْلَى بِمُوسَى مِنْكُمْ." فَصَامَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَمَرَ بِصِيَامِهِ.



١١٥١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "إِنَّ مُوسَى كَانَ رَجُلاً حَيِيًّا."



# HZ. MÛSA Û HZ. HARÛN
## DU XELEKEYÊN PÊXEMBERTIYÊ YÊN BIRA

**1149.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di şeva Îsrayê de ez liqayî Mûsa bin 'Imran (es.) hatim. Zilamek bejindirêj û esmer bû. Pora wî gongil bû. Dişibiha zilamên Qebîla Şenûe..."*

(M419 Muslim, Îman, 267)



**1150.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) hate Medînê, dît ku Cihû Roja Aşûrayê rojî digirin. Resûlê Xwedê (s.) ji wan pirsî: *"Ev çi roje hûn tê de rojî digirin?"* Gotin: "Ev rojeka mezin e. Xwedê Mûsa û qewmê wî di vê rojê de xilas kiriye û Firewn û qewmê wî di vê rojê de bi xerqê helak kiriye. Vêca Mûsa bo şukrê Xwedê ev rojî girtiye em jî digirin." Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Em ji hewe zehftir layîq û nêzîktirê Mûsa ne."* Vêca Resûlê Xwedê (s.) ew roj rojî girt û emrê bi rojîgirtina wê rojê kir."

(M2658 Muslim, Siyam, 128; B2004 Buxarî, Sawm, 69)



**1151.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Mûsa zilamekî xwedan heya bû."*

(B4799 Buxarî, Tefsîr, (Ehzab) 11)



١١٥٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ لَمَّا قَسَمَ النَّبِيُّ ﷺ قِسْمَةَ حُنَيْنٍ قَالَ رَجُلٌ مِنَ الْأَنْصَارِ مَا أَرَادَ بِهَا وَجْهَ اللَّهِ. فَأَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَأَخْبَرْتُهُ، فَتَغَيَّرَ وَجْهُهُ ثُمَّ قَالَ: "رَحْمَةُ اللَّهِ عَلَى مُوسَى، لَقَدْ أُوذِيَ بِأَكْثَرَ مِنْ هَذَا فَصَبَرَ."



١١٥٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: خَرَجَ عَلَيْنَا النَّبِيُّ ﷺ يَوْمًا فَقَالَ: "عُرِضَتْ عَلَيَّ الْأُمَمُ فَجَعَلَ يَمُرُّ النَّبِيُّ مَعَهُ الرَّجُلُ وَالنَّبِيُّ مَعَهُ الرَّجُلاَنِ، وَالنَّبِيُّ مَعَهُ الرَّهْطُ، وَالنَّبِيُّ لَيْسَ مَعَهُ أَحَدٌ، وَرَأَيْتُ سَوَادًا كَثِيرًا سَدَّ الْأُفُقَ فَرَجَوْتُ أَنْ تَكُونَ أُمَّتِي، فَقِيلَ هَذَا مُوسَى وَقَوْمُهُ..."

# HZ. DAWÛD Û HZ. SULEYMAN
## PÊXEMBERÊN HUKUMDAR

١١٥٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خُفِّفَ عَلَى دَاوُدَ عَلَيْهِ السَّلاَمُ الْقُرْآنُ فَكَانَ يَأْمُرُ بِدَوَابِّهِ فَتُسْرَجُ، فَيَقْرَأُ الْقُرْآنَ قَبْلَ أَنْ تُسْرَجَ دَوَابُّهُ، وَلاَ يَأْكُلُ إِلاَّ مِنْ عَمَلِ يَدِهِ."



**1152.** Ebdullah bin Mesûd (r.) dibêje: "Dema Resûlê Xwedê (s.) xenîmeta Huneynê belav kir, zilamekî Ensarî got: 'Resûlê Xwedê ev xenîmet ji bo rizaya Xwedê leva nekiriye.' Ez jî rabûm çûme cem Pêxember (s.) min jê re mesele got. Vêca rengê rûyê Resûlê Xwedê (s.) guherî piştre got: *'Xwedê rehma xwe li Mûsa bike! Ji vê zehftir eziyet lê hatibû kirin ewî sebir kir.'*"

(B4335 Buxarî, Mexazî, 57)



**1153.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Rojekî Resûlê Xwedê (s.) hate cem me û got: *"Ummetên berê nîşanê min bûn. (Min dît) pêxemberek digel zilamekî, pêxemberek digel du zilaman, pêxemberek digel gurûbekî derbas dibû. Pêxemberek jî digel wî kesek nebû. Min reşeka ku sergopik hemî girtî dît û min hêvî kir ku ew ummeta min be. Gotin: Ew Mûsa û qewmê wî ye...*"

(B5752 Buxarî, Tib, 42)

# HZ. DAWÛD Û HZ. SULEYMAN
## PÊXEMBERÊN HUKUMDAR

**1154.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwendina Zebûrê ji Dawûd (es.) re sivik bûbû. Ewî emir dida suwariyên wî (ji bo seferê) dihatine kurtankirin. Belê berî werine kurtankirin ji Zebûrê miqdarek dixwend. Digel vê Dawûd (es.) ne keda destê xwe be tiştek nedixwar."*

(B3417 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 37)



١١٥٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ ﵄ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَحَبُّ الصِّيَامِ إِلَى اللَّهِ صِيَامُ دَاوُدَ كَانَ يَصُومُ نِصْفَ الدَّهْرِ وَأَحَبُّ الصَّلاَةِ إِلَى اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ صَلاَةُ دَاوُدَ عَلَيْهِ السَّلاَمُ كَانَ يَرْقُدُ شَطْرَ اللَّيْلِ ثُمَّ يَقُومُ ثُمَّ يَرْقُدُ آخِرَهُ..."



١١٥٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ : "أَنَّ سُلَيْمَانَ بْنَ دَاوُدَ ﵉ لَمَّا بَنَى بَيْتَ الْمَقْدِسِ سَأَلَ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ خِلاَلاً ثَلاَثَةً سَأَلَ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حُكْمًا يُصَادِفُ حُكْمَهُ فَأُوتِيَهُ وَسَأَلَ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ مُلْكًا لاَ يَنْبَغِى لِأَحَدٍ مِنْ بَعْدِهِ فَأُوتِيَهُ وَسَأَلَ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ حِينَ فَرَغَ مِنْ بِنَاءِ الْمَسْجِدِ أَنْ لاَ يَأْتِيَهُ أَحَدٌ لاَ يَنْهَزُهُ إِلاَّ الصَّلاَةُ فِيهِ أَنْ يُخْرِجَهُ مِنْ خَطِيئَتِهِ كَيَوْمِ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ."



١١٥٧- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كَانَ مِنْ دُعَاءِ دَاوُدَ يَقُولُ: اللَّهُمَّ إِنِّى أَسْأَلُكَ حُبَّكَ وَحُبَّ مَنْ يُحِبُّكَ وَالْعَمَلَ الَّذِى يُبَلِّغُنِى حُبَّكَ اللَّهُمَّ اجْعَلْ حُبَّكَ أَحَبَّ إِلَيَّ مِنْ نَفْسِى وَأَهْلِى وَمِنَ الْمَاءِ الْبَارِدِ."

# HZ. ZEKERIYYA, HZ. YEHYA, HZ. ÎSA

١١٥٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "كَانَ زَكَرِيَّاءُ نَجَّارًا."



**1155.** Ji Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Rojiya ku Xwedê zehftir pê razî rojiya Dawûd e. Ewî nîvê salê rojî digirt. Nimêja ku Xwedê zehftir pê razî nimêja Dawûd (es.) e. Nîvê şevê bi xewê derbas dikir, piştre dirabû nimêj dikir, piştre dawiya şevê jî diraziha..."*

(M2740 Muslim, Siyam, 190)



**1156.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema Suleyman kurê Dawûd (es.) Beytu'l-Meqdis ava kir, ji Xwedê Ezze we Celle sê tişt xwestin: Ji Xwedê Ezze we Celle xwest ku qabiliyeta hukmkirina rast û durust bidiyê. Xwedê ev dayê. Ji Xwedê Ezze we Celle xwest ku hukmekî wisa bidiyê piştî wî nebe nesîb ji kesekî re. Xwedê ev jî dayê. Dema Beytu'l-Meqdis temam kir û ava bû ji Xwedê Ezze we Celle xwest ku kesê tenê bi niyeta nimêjkirinê were vê mizgeftê, wî mîna ku roja ji dayîka xwe bûyî bê guneh bike."*

(N694 Nesaî, Mesacid, 6)



**1157.** Ji Ebu'd-Derda' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dawûd (Eleyhisselam) wiha dua dikir: Xwedayê min! Ez daxwaza hezkirina te, hezkirina kesê ku ji te hez dike û kar û kiryarê ku min bigihêjîne hezkirina te ji te dikim. Xwedayê min! Tu hezkirina xwe li min wisa zêde bike ku ez ji nefsa xwe, ji zar û zêçê xwe û ji ava cemidî zehftir hez ji Te bikim."*

(T3490 Tirmizî, De'ewat, 72)

# HZ. ZEKERIYYA, HZ. YEHYA, HZ. ÎSA

**1158.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Zekeriyya xerat/necar bû."*

(M6162 Muslim, Feda'il, 169)



١١٥٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "كُلُّ بَنِى آدَمَ يَمَسُّهُ الشَّيْطَانُ يَوْمَ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ إلاَّ مَرْيَمَ وَابْنَهَا."



١١٦٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا مِنْ النَّاسِ أَحَدٌ إِلَّا قَدْ أَخْطَأَ أَوْ هَمَّ بِخَطِيئَةٍ لَيْسَ يَحْيَى بْنَ زَكَرِيَّا."



١١٦١- عَنْ عَلِيٍّ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُ نِسَائِهَا مَرْيَمُ، وَخَيْرُ نِسَائِهَا خَدِيجَةُ."



١١٦٢- حَدَّثَنَا عُبَادَةُ بْنُ الصَّامِتِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قَالَ أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَحْدَهُ [لاَ شَرِيكَ لَهُ] وَأَنَّ مُحَمَّدًا عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ وَأَنَّ عِيسَى عَبْدُ اللَّهِ وَابْنُ أَمَتِهِ وَكَلِمَتُهُ أَلْقَاهَا إِلَى مَرْيَمَ وَرُوحٌ مِنْهُ وَأَنَّ الْجَنَّةَ حَقٌّ وَأَنَّ النَّارَ حَقٌّ أَدْخَلَهُ اللَّهُ مِنْ أَيِّ أَبْوَابِ الْجَنَّةِ الثَّمَانِيَةِ شَاءَ."

**1159.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bilî Meryemê û kurê wê, şeytan roja ji dayîk dibin dest li hemî însanan dide."*

(M6135 Muslim, Feda'il, 147)



**1160.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav însanan de ji bilî Yehya kurê Zekeriya kesekê xeletiyek nekiribe an jî niyeta kirina xeletiyê nekirî tune ye."*

(HM2689 Ibn Hanbel, I, 293)



**1161.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Meryem xêrtirê jinên (dewra xwe de) ye û Xedîce xêrtirê jinên (dewra xwe de) ye."*

(B3815 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 20)



**1162.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî bêje: 'Ez şehde didim ku ji bilî Xwedê Ellah tu xweda nînin (şirîkê wî jî nînin), bêguman Muhemmed ebdê Wî û resûlê Wî ye û bêguman Îsa ebdê Xwedê ye û kurê ebda Xwedê ye û kelîma Wî ye ya (ku bi emrê xwe jê anî heyînê) gihandiyê û ruhek ji teref Xwedê ve (hatiye) ye û cennet heq e û cehneme heq e' wê Xweda wî bixe cennetê de ji kîjan ji heşt deriyî bixwaze."*

(M140 Muslim, Îman, 46)

# XIZIR
## ALÎKARIYA XWEDÊ YA JI NIŞKA VE TÊ

١١٦٣- حَدَّثَنَا أُبَيُّ بْنُ كَعْبٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: ... "يَرْحَمُ اللَّهُ مُوسَى، لَوَدِدْنَا لَوْ صَبَرَ حَتَّى يُقَصَّ عَلَيْنَا مِنْ أَمْرِهِمَا."



١١٦٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا سُمِّيَ الْخَضِرُ لِأَنَّه جَلَسَ عَلَى فَرْوَةٍ بَيْضَاءَ فَإِذَا هِيَ تَهْتَزُّ مِنْ خَلْفِهِ خَضْرَاءَ."

# PÊXEMBERÊN DÎTIR
## XELEKEYÊN ZINCÎRA NUBUWWETÊ

١١٦٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ... فَغَضِبَ النَّبِيُّ ﷺ حَتَّى رُئِيَ فِى وَجْهِهِ، ثُمَّ قَالَ: "لاَ تُفَضِّلُوا بَيْنَ أَنْبِيَاءِ اللَّهِ..."



١١٦٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... وَالْأَنْبِيَاءُ إِخْوَةٌ لِعَلاَّتٍ، أُمَّهَاتُهُمْ شَتَّى، وَدِينُهُمْ وَاحِدٌ."



# XIZIR
## ALÎKARIYA XWEDÊ YA JI NIŞKA VE TÊ

**1163.** Ji Ubey bin Ke'b (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.)... (piştî qisseta Mûsa û Xizir ji me re got) wiha gotiye: *"Xwedê rehmê li Mûsa bike. Xwezî sebir kiriba de qene tiştên (dîtir) yên di neqeba wan de derbas bibana ji me re gotiba."*

(B122 Buxarî, Ilim, 44)



**1164.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sebebê ku navê Xizir, Xizir e (Xidir, yanî kesk) ew e ku dema li erdeka hişk û biring a bêgiya dirûnişt, piştre te didît wê (ji giya) kesk bûye."*

(B3402 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 27; T3151 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 18)

# PÊXEMBERÊN DÎTIR
## XELEKEYÊN ZINCÎRA NUBUWWETÊ

**1165.** Ebû Hureyre (r.) dibêje:.. (Zilamekê Ensarî bi Cihûkî re, ka kîjan pêxember efdeltir e/çêtir e minaqeşe kiribûn. Dema xeber gihate Pêxember) Resûlê Xwedê (s.) enirî heta di rûyê wî de xuya kir. Piştre got: *"Pêxemberên Xwedê neêxin mijara fezîlet û bilindbûnê..."*

(B3414 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 35; M6151 Muslim, Feda'il, 159)



**1166.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Pêxember birayên hev yên bavê wan yek û dayîka wan cuda ne. Dînê wan jî yek e."*

(B3443 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)



١١٦٧- أَخْبَرَنِى سَالِمُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ عَنْ اَبِيهِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ لمَاَّ مَرَّ بِالْحِجْرِ قَالَ: "لاَتَدْخُلوُا مَسَاكِنَ الَّذِينَ ظَلَمُوا إِلاَّ اَنْ تَكُونُوا بَاكِينَ اَنْ يُصِيبَكُمْ مَا اَصَابَهُمْ."



١١٦٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَرْحَمُ اللَّهُ لُوطًا، لَقَدْ كَانَ يَأْوِى إِلَى رُكْنٍ شَدِيدٍ..."



١١٦٩- عَنْ سَعْدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "دَعْوَةُ ذِى النُّونِ إِذْ دَعَا وَهُوَ فِى بَطْنِ الْحُوتِ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ سُبْحَانَكَ إِنِّى كُنْتُ مِنَ الظَّالِمِينَ. فَإِنَّهُ لَمْ يَدْعُ بِهَا رَجُلٌ مُسْلِمٌ فِى شَيْءٍ قَطُّ إِلاَّ اسْتَجَابَ اللَّهُ لَهُ."

# UMMETÊN BUHÛRÎ
## XWENDINA TARÎXÊ BI IBRET

١١٧٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو قَالَ: كَانَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ يُحَدِّثُنَا عَنْ بَنِى إِسْرَائِيلَ حَتَّى يُصْبِحَ مَا يَقُومُ إِلاَّ إِلَى عُظْمِ صَلاَةٍ.



**1167.** Salim bin Ebdîllah (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku dema Resûlê Xwedê (s.) di (axa qewmê Semûd) el-Hîcrê de derbas bû, got: *"Di cihê wan kesên zilm (li xwe) kirî de bi girî (bi ibret) derbas bibin da ku musîbeta hatî serê wan neyê serê we jî."*

(B3380 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 17)



**1168.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê rehmê li Lût (es.) bike. Bêguman ewî xwe sipartibû kelheke sexlem…"*

(B4694 Buxarî, Tefsîr, (Yûsuf) 5)



**1169.** Ji Se'd (bin Ebî Weqqas) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Duaya Zu'n-Nûn (Yûnus) dema di zikê masî de kirî ev e: 'Ji bilî te tu îlahê heq nîn in. Ez Te ji her cure kêmasiya tenzih dikim. Bi rastî ez bûm ji wan kesên ku zilm li xwe kirine.' Çi Misilmanê ku ji bo tiştekî vê duayê bixwêne mitleqa wê Xwedê dua wî qebûl bike."*

(T3505 Tirmizî, De'ewat, 81)

# UMMETÊN BUHÛRÎ
## XWENDINA TARÎXÊ BI IBRET

**1170.** Ebdullah bin 'Emr (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) (carna) heta sibihê ji me re qisetên Benî Îsraîliyan dikir. Dema biketa wextê nimêjeka ferz de dirabû."

(D3663 Ebû Dawûd, Ilim, 11)



١١٧١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "... حَدِّثُوا عَنْ بَنِى إِسْرَائِيلَ وَلاَ حَرَجَ..."



١١٧٢- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَتَتْبَعُنَّ سَنَنَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ شِبْرًا شِبْرًا، وَذِرَاعًا بِذِرَاعٍ، حَتَّى لَوْ دَخَلُوا جُحْرَ ضَبٍّ تَبِعْتُمُوهُمْ."



١١٧٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْكَلِمَةُ الْحِكْمَةُ ضَالَّةُ الْمُؤْمِنِ، فَحَيْثُ وَجَدَهَا فَهُوَ أَحَقُّ بِهَا."

# FIREWN, HAMAN Û QARÛN
## SÊ NEYARÊN DIJWAR YÊN TEWHÎDÊ

١١٧٤- عَنْ أَنَسٍ رضي الله عنه أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "حَسْبُكَ مِنْ نِسَاءِ الْعَالَمِينَ: مَرْيَمُ ابْنَةُ عِمْرَانَ، وَخَدِيجَةُ بِنْتُ خُوَيْلِدٍ، وَفَاطِمَةُ بِنْتُ مُحَمَّدٍ، وَآسِيَةُ امْرَأَةُ فِرْعَوْنَ."



**1171.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*... Neqlê ji Benî Îsraîliyan bikin. Di vê de tu zerer nîn e...*"

(B3461 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 50)



**1172.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Miheqqeq hûn ê li pey şop û edetê ummetên beriya we bost bost, gez gez biçin. Hetta heke ew bikevin qula kêgeratekî de hûnê cardî li pey wan biçin.*"

(B7320 Buxarî, I'tîsam, 14)



**1173.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Gotina bi hikmet, malê mumin ê windabûyî ye; ew ê li ku derê bibîne ew layîqtir e ku (hîn bibe û egera wê pêkbîne) wê bi dest bike.*"

(T2687 Tirmizî, Ilim, 19)

# FIREWN, HAMAN Û QARÛN
## SÊ NEYARÊN DIJWAR YÊN TEWHÎDÊ

**1174.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Di nav jinên alemê de (yê bibin numûne û model) Meryem keça 'Imran, Xedîce keça Xuweylid, Fatîme keça Muhemmed û Asiye xanima Firewn besî te ne.*"

(T3878 Tirmizî, Menaqib, 61)



١١٧٥- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ، قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَوْمَ بَدْرٍ، فَقُلْتُ قَتَلْتُ أَبَا جَهْلٍ، قَالَ: "آللَّهِ الَّذِي لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ؟" قَالَ: قُلْتُ: آللَّهِ الَّذِي لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ، فَرَدَّدَهَا ثَلَاثًا، قَالَ: "اللَّهُ أَكْبَرُ، الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِي صَدَقَ وَعْدَهُ، وَنَصَرَ عَبْدَهُ، وَهَزَمَ الْأَحْزَابَ وَحْدَهُ، انْطَلِقْ فَأَرِنِيهِ"، فَانْطَلَقْنَا، فَإِذَا بِهِ، فَقَالَ: "هَذَا فِرْعَوْنُ هَذِهِ الْأُمَّةِ."

# NECAŞÎ
## HUKUMDARÊ HEBEŞÎSTANÊ YÊ ADIL

١١٧٦- عَنْ أَبِي مُوسَى رضي الله عنه ... فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "لَكُمْ أَنْتُمْ ﴿يَا﴾ أَهْلَ السَّفِينَةِ هِجْرَتَانِ."



١١٧٧- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ رضي الله عنها زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَتْ... فقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "إِنَّ بِأَرْضِ الْحَبَشَةِ مَلِكًا لاَ يُظْلَمُ أَحَدٌ عِنْدَهُ فَالْحَقُوا بِبِلاَدِهِ حَتَّى يَجْعَلَ اللَّهُ لَكُمْ فَرَجًا وَمَخْرَجًا مِمَّا أَنْتُمْ فِيهِ..."



١١٧٨- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَاتَ الْيَوْمَ عَبْدٌ لِلَّهِ صَالِحٌ أَصْحَمَةُ" فَقَامَ فَأَمَّنَا وَصَلَّى عَلَيْهِ.



**1175.** Ibn Mesûd (r.) gotiye: "Roja Herba Bedrê ez çûme cem Pêxember (s.) min jê re got: "Min Ebû Cehil kuşt." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Tu bi wî Xwedayê ji bilî wî tu xwedayê heq nînin (ma te ew kuşt?)"* Min got: "Bi wî Xwedayê ji bilî wî tu xwedayê heq nînin (belê min ew kuşt?)" Sê caran dubare kir. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Xwedê mezintir e. Hemd ji wî Xwedayî re be ku soza xwe pêkanî, piştgiriya ebdê xwe kir, ew leşkerên yekbûyî hemîre bi serê xwe hezimandin. Ka were nîşa min bike."* Em çûn, me dît va ye ew e (Ebû Cehil e). Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ev Firewnê vê ummetê ye."*

(HM4247 Ibn Hanbel, I, 445)

# NECAŞÎ
## HUKUMDARÊ HEBEŞÎSTANÊ YÊ ADIL

**1176.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) (di derbareyê Misilmanê hîcretê Hebeşîstanê kirî de ) gotiye: *"Ey ehlê keştiyê! Ji we re (xêra) du hicretan heye."*

(B3876 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 37)



**1177.** Ji xanima Pêxember Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) ji wan re (sehabiyan) got: *"Li erdê Hebeşîstanê qiralek heye, li bal wî zilm li tu kesî nayê kirin. Herin memleketê wî, heta Xwedê rêyeka xilasiyê û fereca xêrê ji we re vekir..."*

(BS18232 Beyheqî, es-Sunenu'l-kubra, IX, 17)



**1178.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îro ebdê Xwedê yê salih Esheme (Necaşî) wefat kir."* Piştre rabû îmamtiya me kir û nimêja cenaze ya xiyabî li ser kir."

(M2208 Muslim, Cena'iz, 65)



١١٧٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ قَالَ: نَعَى لَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ النَّجَاشِيَّ صَاحِبَ الْحَبَشَةِ، الْيَوْمَ الَّذِى مَاتَ فِيهِ فَقَالَ: "اسْتَغْفِرُوا لِأَخِيكُمْ."

# DEWRA CAHILIYETÊ
## ZILM, ZORDARÎ Û CEHALET

١١٨٠- عَنْ جُنْدَبِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْبَجَلِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ قُتِلَ تَحْتَ رَايَةٍ عُمِّيَّةٍ، يَدْعُو عَصَبِيَّةً، أَوْ يَنْصُرُ عَصَبِيَّةً، فَقِتْلَةٌ جَاهِلِيَّةٌ."



١١٨١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَطَبَ النَّاسَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَذْهَبَ عَنْكُمْ عُبِيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَتَعَاظُمَهَا بِآبَائِهَا فَالنَّاسُ رَجُلاَنِ: رَجُلٌ بَرٌّ تَقِيٌّ كَرِيمٌ عَلَى اللَّهِ وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ هَيِّنٌ عَلَى اللَّهِ وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَخَلَقَ اللَّهُ آدَمَ مِنَ التُّرَابِ..."



١١٨٢- أَنَّ أَبَا مَالِكٍ الْأَشْعَرِيَّ حَدَّثَهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعٌ فِى أُمَّتِى مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ لاَ يَتْرُكُونَهُنَّ: الْفَخْرُ فِى الْأَحْسَابِ وَالطَّعْنُ فِى الْأَنْسَابِ وَالْإِسْتِسْقَاءُ بِالنُّجُومِ وَالنِّيَاحَةُ..."



**1179.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) xebera mirina qiralê Hebeşîstanê Necaşî di roja ku tê de mirî, da me û got: *"Ji bo birayê xwe ji Xwedê efû û mexfîretê bixwazin."*

(B1327 Buxarî, Cena'iz, 60)

# DEWRA CAHILIYETÊ
## ZILM, ZORDARÎ Û CEHALET

**1180.** Ji Cundub bin Ebdillah el-Becelî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di bin alaya qewmek ji rê derketî de nijadperestiyê bihebîne an jî destekê bide nijadperestiyekê û were kuştin, mirina wî kesî weke mirina ehlê cahiliyyetê ye."*

(M4792 Muslim, Imare, 57)



**1181.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Mekkeyê xutbeyek xwend û got: *"Gelî mirovan! Bê guman Xwedê xurûra Cahiliyetê û pesindana bi bav û kalan ji nav we rakir, vêca mirov du gurûb in: Qencê mutteqî yê li cem Xwedê biqedir û gunehkarê rûreş ê li cem Xwedê bêqîmet. Mirov zarokên Adem in û Xwedê Adem ji axê çêkiriye..."*

(T3270 Tirmizî,Tefsîru'l-Qur'an, 49; D5116 Ebû Dawûd, Edeb, 110, 111)



**1182.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di ummeta min de çar tişt hene ji edetên Dewra Cahiliyetê ne (zûbizû) dev ji wan bernadin. Îftîxara bi eslê xwe, zemma neseba, xwestina baranê bi sitêrka û şîna miriya bi giriyê bilind."*

(M2160 Muslim, Cena'iz, 29)



١١٨٣- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ عَمْرٍو عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فِى حَجَّةِ الْوَدَاعِ يَقُولُ: "أَلاَ إِنَّ كُلَّ رِبًا مِنْ رِبَا الْجَاهِلِيَّةِ مَوْضُوعٌ لَكُمْ رُءُوسُ أَمْوَالِكُمْ لاَ تَظْلِمُونَ وَلاَ تُظْلَمُونَ. أَلاَ وَإِنَّ كُلَّ دَمٍ مِنْ دَمِ الْجَاهِلِيَّةِ مَوْضُوعٌ وَأَوَّلُ دَمٍ أَضَعُ مِنْهَا دَمُ الْحَارِثِ بْنِ عَبْدِ الْمُطَّلِبِ..."



١١٨٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ بِحَدِيثٍ يَرْفَعُهُ قَالَ: "النَّاسُ مَعَادِنُ كَمَعَادِنِ الْفِضَّةِ وَالذَّهَبِ خِيَارُهُمْ فِى الْجَاهِلِيَّةِ خِيَارُهُمْ فِى الإِسْلاَمِ إِذَا فَقُهُوا..."

# DEWRA CAHILIYETÊ
## ÇAVKANIYÊN ZANÎNÊ

١١٨٥- عَنْ صَفِيَّةَ، عَنْ بَعْضِ أَزْوَاجِ النَّبِيِّ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَتَى عَرَّافًا فَسَأَلَهُ عَنْ شَيْءٍ لَمْ تُقْبَلْ لَهُ صَلاَةٌ أَرْبَعِينَ لَيْلَةً."



١١٨٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "اجْتَنِبُوا الْمُوبِقَاتِ: الشِّرْكُ بِاللَّهِ، وَالسِّحْرُ."



١١٨٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ، عَنْ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تَعَلَّمُوا مِنْ أَنْسَابِكُمْ مَا تَصِلُونَ بِهِ أَرْحَامَكُمْ..."



**1183.** Ji Suleyman bin 'Emr (r.) hatiye rîwayetkirin ku bavê wî di Heccetu'l-Wedaê de ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Zanibin, faîza Cahiliyetê tev hatiye rakirin. Sermayê we ji we re ye. Hûn ê ne zilmê bikin ne jî wê zilm li we were kirin. Zanibin çi xwîndariya ji dewra cahiliyetê hebe hemî hatine rakirin. Xwîndariya pêşî ez dirakim (betaldikim) xwîna el-Haris bin Ebdulmuttelb e..."*

(D3334 Ebû Dawûd, Buyû', 5; T3087 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 9)



**1184.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Însan (weke) medenan e, Qenctirê wan yên di dewra cahiliyetê de, di dewra Îslamê de jî qenctirê wan in heke ku (dîn) qenc fêhm kiribin..."*

(M6709 Muslim, Birr we sile, 160; B3336 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 2)

# DEWRA CAHILIYETÊ
## ÇAVKANIYÊN ZANÎNÊ

**1185.** Ji Sefiyye (r.) hatiye ragihandin hinekan ji xanimên Pêxember (s.) gotine: "Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Kesê here cem kahinekî û pirsa tiştekî jê bike, çil şevan nimêjên wî nayine qebûlkirin.'*"

(M5821 Muslim, Selam, 125)



**1186.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji van gunehên ku (însana) helak dikin dûr bêxin: Hebandina şirîkan ji Xwedê re û sihirbazî."*

(B5764 Buxarî, Tib, 48)



**1187.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Neseba (sulaleya) xwe nas bikin; de qene hûn karibin sileê rehmê (huqûqê eqrebatiyê) pêk bînin..."*

(HM8855 Ibn Hanbel, II, 374)



١١٨٨- أَنَّ أَبَا مَالِكٍ الْأَشْعَرِيَّ حَدَّثَهُ، أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعٌ فِى أُمَّتِى مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ لاَ يَتْرُكُونَهُنَّ: الْفَخْرُ فِى الْأَحْسَابِ، وَالطَّعْنُ فِى الْأَنْسَابِ، وَالْاِسْتِسْقَاءُ بِالنُّجُومِ، وَالنِّيَاحَةُ..."



١١٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: ...قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تُصَدِّقُوا أَهْلَ الْكِتَابِ وَلاَ تُكَذِّبُوهُمْ، وَ قُولُوا: ﴿آمَنَّا بِاللَّهِ وَمَا أُنْزِلَ﴾."



١١٩٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مِنْ أُمَّتِى سَبْعُونَ أَلْفًا بِغَيْرِ حِسَابٍ، هُمُ الَّذِينَ لاَ يَسْتَرْقُونَ وَلاَ يَتَطَيَّرُونَ وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ."

# DEWRA CAHILIYETÊ
## BAWERÎ Û ÎBADET

١١٩١- أَنَّ أَبَا مَالِكٍ الْأَشْعَرِيَّ حَدَّثَهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَرْبَعٌ فِى أُمَّتِى مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ لاَ يَتْرُكُونَهُنَّ: الْفَخْرُ فِى الْأَحْسَابِ وَالطَّعْنُ فِى الْأَنْسَابِ وَالْاِسْتِسْقَاءُ بِالنُّجُومِ وَالنِّيَاحَةُ..."



**1188.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di ummeta min de çar tişt hene ji edetên Dewra Cahiliyetê ne (zûbizû) dev ji wan bernadin. Îftîxara bi eslê xwe, zemma neseba, xwestina baranê bi sitêrka û şîna miriya bi giriyê bilind."*

(M2160 Muslim, Cena'iz, 29)



**1189.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Rasûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ne tesdîqa Ehlê kitêbê (Cihû û File) bikin ne jî tekzîba wan bikin. (Belê) bêjin: 'Me bawerî bi ya ji me re û bi ya ji we re nazil bûyî aniye* (Ankebût, 29/46)*.'"*

(B7542 Buxarî, Tewhîd, 51)



**1190.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji ummeta min wê heftê hezar kes bêhesab biçine cennetê. Ew kesên nivîştan bi xwe ve nakin, ewên baweriyê bi bêoxuriyê naynin û ewên (di her halî de) ji Rebbê xwe ewle ne û tewekkula Xwedayê xwe dikin."*

(B6472 Buxarî, Riqaq, 21)

# DEWRA CAHILIYETÊ
## BAWERÎ Û ÎBADET

**1191.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di ummeta min de çar tişt hene ji edetên Dewra Cahiliyetê ne (zûbizû) dev ji wan bernadin. Îftîxara bi eslê xwe, zemma neseba, xwestina baranê bi sitêrka û şîna miriya bi giriyê bilind."*

(M2160 Muslim, Cena'iz, 29)



١١٩٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ فَرَعَ وَلاَ عَتِيرَةَ."



١١٩٣- أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ حَلَفَ مِنْكُمْ فَقَالَ فِى حَلِفِهِ: بِاللاَّتِ فَلْيَقُلْ: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ..."



١١٩٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَطَمَ الْخُدُودَ، وَشَقَّ الْجُيُوبَ، وَدَعَا بِدَعْوَى الْجَاهِلِيَّةِ."



١١٩٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: أَبْغَضُ النَّاسِ إِلَى اللَّهِ ثَلاَثَةٌ: "مُلْحِدٌ فِى الْحَرَمِ، وَمُبْتَغٍ فِى الإِسْلاَمِ سُنَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ، وَمُطَّلِبُ دَمِ امْرِئٍ بِغَيْرِ حَقٍّ لِيُهَرِيقَ دَمَهُ."

**1192.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Rasûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di Îslamê de (qurbanên) fere' û etîre tune ne."*

(B5473 Buxarî, Eqîqe, 3; M5116 Muslim, Edâhî, 38)

Fere', qurbankirina çêlikê salê yê pêşîn e. Etîre, qurbanek e ku ehlê cahiliyetê di meha Recebê de didan.



**1193.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Rasûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê ji hewe sond xwar û di sonda xwe de got: 'Bi Lat sond dixwim' bila bêje 'La îlahe îllellah'..."*

(M4260 Muslim, Eyman, 5)



**1194.** Ji Ebdillah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê (şîna miriyan) bi lêdana lemika, bi cilqetandinê û bi feryad û fîxankirina dewra cahiliyetê bigirî ne ji me ye."*

(B1294 Buxarî, Cena'iz, 35)



**1195.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirovên ku Xwedê ji wan nefret dike sê kes in: "Kesê di mintîqa Heremê de zilm û neheqiyê dike, kesê li edeteka Dewra Cahiliyetê digere ku bîne bixe Îslamê de (pê emel bike) û kesê dixwaze xwîna yekî bi neheqî birijêne."*

(B6882 Buxarî, Diyat, 9)

# YEKÊ JI NAV ME
## RÛ HEYV, BÊHN GUL, PÊXEMBERÊ DAWÎ

١١٩٦- قَالَ الْحُسَيْنُ: سَأَلْتُ أَبي عَنْ سِيرَةِ النَّبِيِّ ﷺ، فِي جُلَسَائِهِ، فَقَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ، دَائِمَ الْبِشْرِ، سَهْلَ الْخُلُقِ، لَيِّنَ الْجَانِبِ، لَيْسَ بِفَظٍّ وَلَا غَلِيظٍ، وَلَا صَخَّابٍ وَلَا فَحَّاشٍ، وَلَا عَيَّابٍ وَلَا مُشَاحٍ، يَتَغَافَلُ عَمَّا لَا يَشْتَهِي، وَلا يُؤْيِسُ مِنْهُ رَاجِيهِ وَلَا يُخَيَّبُ فِيهِ...



١١٩٧- حَدَّثَنَا حِزَامُ بْنُ هِشَامِ بْنِ حُبَيْشِ بْنِ خَالِدِ بْنِ خُلَيْدِ بْنِ رَبِيعَةَ الْخُزَاعِيُّ، حَدَّثَنَا أَبِي، عَنْ جَدِّهِ، عَنْ أُخْتِهِ أُمِّ مَعْبَدٍ وَاسْمُهَا عَاتِكَةُ بِنْتُ خَالِدٍ الْخُزَاعِيَّةُ قَالَتْ... فَقَالَ: صِفِيهِ لِي، قُلْتُ: نَعَمْ، رَجُلٌ ظَاهِرُ الْوَضَاءَةِ، أَبْلَجُ الْوَجْهِ، حَسَنُ الْخُلُقِ، بَسَّامًا، وَلَيْسَ نَحِيلًا، وَلَا مُدْلِمًا، وَلا مُطْهَمًا، أَبْيَضُ، وَسِيمٍ، ثَقِيلٌ، أَدْعَجُ الْعَيْنَيْنِ، أَهْدَبُ الْأَشْفَارِ...



# YEKÊ JI NAV ME
## RÛ HEYV, BÊHN GUL, PÊXEMBERÊ DAWÎ

**1196.** Hz. Huseyn (r.) gotiye: "Min ji bavê xwe pirsa munasebet û têkilêyên Pêxember bi hevalên wî re kir. Ewî got: 'Resûlê Xwedê (s.) her wextî rûken bû, tebîet nerm û nazik bû. Ne tebîet hişkek hov bû ne jî dilhişk bû. Qîrîn nedikir, gotinên pîs û fehş nedigotin. Tu kes eybdar nedikir û kunujtî nedikir. Tişta ne xwestiba çavê xwe lê dinûqand. Tu hêvîdarên xwe bêhêvî nedikir û ew destvale ne dişiyandin..."

(TŞ352 Tirmizî, Şema'il, 160)



**1197.** Hîzam bin Hîşam bin Hubeyş bin Xalid bin Xuleyd bin Rebî'a el-Xuza'î (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku xwîşka wî Ummu Me'bed ya navê wê Atîke bint Xalid el-Xuza'îyye ye gotiye:... (Mêrê min ji min re got: 'Ka sifetên wî (Pêxember) ji min re bêje.' Min got: 'Helbet, zilamekî paqij dîmen û xweşik bû, rûyê wî ronak û geş bû, endam xweşik bû, beşûşê rûbiken bû, ne qelew bû ne jî zeîf bû, ne zêde qamdirêjekî reş bû, laşê wî sipî bû, bedena wî munasib û delal bû, giraneke di hedê xwe de bû, reşik û sipîka çavên wî diyar bû, mijgûlên wî dirêj bûn..."

(ŞM3485 Ebû Bekir eş-Şeybanî, el-Ahad we'l-mesanî, V, 629-631)



١١٩٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ ﷺ، أَنَّهُ قَالَ: لِهِنْدِ بْنِ أَبِي هَالَةَ التَّمِيمِيِّ وَكَانَ رَبِيبًا لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ: صِفْ لَنَا رَسُولَ اللَّهِ ﷺ، فَلَعَلَّكَ أَنْ تَكُونَ أَثْبَتَ مِنَّا لَهُ مَعْرِفَةً قَالَ: كَانَ بِأَبِي هُوَ وَأُمِّي، طَوِيلَ الصَّمْتِ، دَائِمَ التَّفْكِيرِ، مُتَوَاتِرَ الْأَحْزَانِ، إِذَا تَكَلَّمَ تَكَلَّمَ بِجَوَامِعِ الْكَلِمِ، لَا فَضْلَ وَلَا تَقْصِيرَ، وَإِذَا حَدَّثَ أَعَادَ، وَإِذَا وَعَظَ جَدَّ وَمَادَ، وَإِذَا خُولِفَ أَعْرَضَ وَشَاحَ، يَتَرَوَّحُ إِلَى حَدِيثِ أَصْحَابِهِ، يُعَظِّمُ النِّعْمَةَ وَإِنْ دَقَّتْ، وَلَا يَذُمُّ ذَوَاقًا، وَيَبْتَسِمُ عَنْ مِثْلِ حَبِّ الْغَمَامِ.

## HZ. PÊXEMBER
## NAVÊN WÎ; NAVÊ WÎ XWEŞ, EW BI XWE XWEŞ MUHEMMED

١١٩٩- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ الْأَنْصَارِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "سَمُّوا بِاسْمِي، وَلاَ تَكْتَنُوا بِكُنْيَتِي، فَإِنَّمَا أَنَا قَاسِمٌ أَقْسِمُ بَيْنَكُمْ."



١٢٠٠- عَنْ أَبِي مُوسَى الْأَشْعَرِيِّ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُسَمِّي لَنَا نَفْسَهُ أَسْمَاءً فَقَالَ: "أَنَا مُحَمَّدٌ وَأَحْمَدُ وَالْمُقَفِّي وَالْحَاشِرُ وَنَبِيُّ التَّوْبَةِ وَنَبِيُّ الرَّحْمَةِ."



**1198.** Ebdullah bin Ebbas (r.) ji zirkurê Pêxember Hind bin Ebî Hale re gotiye: “Ka sifetên Resûlê Xwedê (s.) ji me re bêje. Dibe ku tu ji me çêtir wî nas bikî. Vêca Hind got: ‘Bav û dayîka min fidayê wî bin! Ew bi zehfî bêdeng bû, her wextî tefekkur dikir û pirê caran mehzûn bû. Dema biştexiliya şitexaliyên têr me‘ne digotin; ne dirêj dikir ne jî kin dikir. Dema xeber bida dubare dikir. Dema we‘z kiriba bi ciddiyet û bi huzn dida. Dema kesekî xîlafa wî kiriba berê xwe jê dizivirand û dûr diket, bi sohbeta sehabiyên xwe dilgeş dibû. Çenda hindik jî ba nimet mezin didît. Zema tu xwarinan nedikir. Bi tebessum dikenî û dinanên wî mina libên teyrûkê (sipî sipî) xuya dikirin.”

(ŞM1231 Ebû Bekir eş-Şeybanî, el-Ahad we'l-mesanî, II, 418)



# HZ. PÊXEMBER
## NAVÊN WÎ; NAVÊ WÎ XWEŞ, EW BI XWE XWEŞ MUHEMMED

**1199.** Ji Cabir bin Ebdîllah el-Ensarî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Navê min li zarokê xwe bikin. Belê kunya min li xwe nekin. Bêguman ez bi navê xwe Qasim (levaker) hatime şiyandin û (tiştên lazim e werine levakirin) li we leva dikim.”*

(B6196 Buxarî, Edeb, 109; M5591 Muslim, Adab, 5)



**1200.** Ji Ebû Mûsa el-Eş‘erî (r.) hatiye ragihandin gotiye: “Resûlê Xwedê (s.) navên xwe wiha ji me re digot: *‘Ez Muhemmed'im, Ehmed'im, (yê piştî pêxemberan hatî) el-Muqeffa'yim, (yê ku mirov li pey kom dibin) el-Haşir'im, Pêxemberê Tobê me û Pêxemberê Rehmetê me.’*”

(M6108 Muslim, Feda'il, 126)



١٢٠١- عَنِ الزُّهْرِيِّ سَمِعَ مُحَمَّدَ بْنَ جُبَيْرِ بْنِ مُطْعِمٍ عَنْ أَبِيهِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَنَا مُحَمَّدٌ وَأَنَا أَحْمَدُ وَأَنَا الْمَاحِي الَّذِي يُمْحَى بِيَ الْكُفْرُ وَأَنَا الْحَاشِرُ الَّذِي يُحْشَرُ النَّاسُ عَلَى عَقِبِي وَأَنَا الْعَاقِبُ." وَالْعَاقِبُ الَّذِي لَيْسَ بَعْدَهُ نَبِيٌّ.



١٢٠٢- عَنْ عَطَاءِ بْنِ يَسَارٍ قَالَ: لَقِيتُ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ رضي الله عنه قُلْتُ أَخْبِرْنِي عَنْ صِفَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي التَّوْرَاةِ. قَالَ: أَجَلْ، وَاللَّهِ إِنَّهُ لَمَوْصُوفٌ فِي التَّوْرَاةِ بِبَعْضِ صِفَتِهِ فِي الْقُرْآنِ: "يَا أَيُّهَا النَّبِيُّ إِنَّا أَرْسَلْنَاكَ شَاهِدًا وَمُبَشِّرًا وَنَذِيرًا"، وَحِرْزًا لِلأُمِّيِّينَ، أَنْتَ عَبْدِي وَرَسُولِي سَمَّيْتُكَ الْمُتَوَكِّلَ، لَيْسَ بِفَظٍّ وَلاَ غَلِيظٍ وَلاَ سَخَّابٍ فِي الْأَسْوَاقِ، وَلاَ يَدْفَعُ بِالسَّيِّئَةِ السَّيِّئَةَ وَلَكِنْ يَعْفُو وَيَغْفِرُ...



١٢٠٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: سَمِعَ عُمَرَ رضي الله عنه يَقُولُ عَلَى الْمِنْبَرِ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ تُطْرُونِي كَمَا أَطْرَتِ النَّصَارَى ابْنَ مَرْيَمَ فَإِنَّمَا أَنَا عَبْدُهُ، فَقُولُوا: عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ."

# HZ. PÊXEMBER
## EBDÊ XWEDÊ YÊ BIJARTE

١٢٠٤- عَنْ عَبَّاسِ بْنِ عَبْدِ الْمُطَّلِبِ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "ذَاقَ طَعْمَ الْإِيمَانِ مَنْ رَضِيَ بِاللَّهِ رَبًّا وَبِالْإِسْلَامِ دِينًا وَبِمُحَمَّدٍ نَبِيًّا رَسُولًا."



**1201.** Ez-Zuhrî, ji Muhemmed bin Cubeyr bin Mut'im bihîstiye ku bavê wî gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Ez Muhemmed im, ez Ehmed im, ez yê ku kufr bi min tê rakirin el-Mahî me, ez yê ku mirov li piş min kom dibin el-Haşir im û ez el-Aqib im.'* El-Aqib, ew kesê piştî wî pêxember nîn e."

(M6105 Muslim, Feda'il, 124; B3532 Buxarî, Menaqib, 17)



**1202.** Ji Eta bin Yesar (r.) hatiye ragihandin ku gotiye: "Ez liqayî Ebdullah bin 'Emr bin el-'As (r.) hatim. Min jê re got: Ji min re behsa sifetên Resûlê Xwedê (s.) yên di Tewratê de ne bike. Ewî got: 'Erê wellahî hinek sifetên wî yên di Qur'anê de hene di Tewratê de jî ew sifet hene. 'Ey Pêxember! Me tu şiyandî da ku tu şahidiyê bikî, mizgîniyê bidî, şiyar bikî û ummiya biparêzî. Tu ebdê min î, resûlê min î. Min navê te kir "el-Mutewekkil" Ne tebîet hişkek hov e û ne jî dilhişk e. Di sûkan de qîrîn nedikir. Pêşberê xirabiyê de xirabî nedikir. Belê efû dikir û dibexşand…'"

(B2125 Buxarî, Buyû', 50)



**1203.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku ji Umer (r.) bihîstiye li ser mînberê digot: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Di medhê min de zêdegaviya nekin weke ku Fileya di medhê kurê Meryemê (Îsa) de zêdegavi kirin. Bêguman ez tenê ebdê wî me. Bêjin: Ew ebdê Xwedê û resûlê wî ye.'*"

(B3445 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)

## HZ. PÊXEMBER
### EBDÊ XWEDÊ YÊ BIJARTE

**1204.** Ji Ebbas bin Ebdulmuttelib (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê Xwedê reb, Îslamê dîn û Muhemmed pêxember û resûl qebûl kirî zewqa îmanê tam kiriye."*

(HM1778 Ibn Hanbel, I, 208)



١٢٠٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِى فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ، وَمَنْ عَصَانِى فَقَدْ عَصَى اللَّهَ..."



١٢٠٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ رَافِعٍ قَالَ: سَمِعْتُ أُمَّ سَلَمَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ بِهَذَا الْحَدِيثِ قَالَ: يَخْتَصِمَانِ فِى مَوَارِيثَ وَأَشْيَاءَ قَدْ دَرَسَتْ فَقَالَ: "إِنِّى إِنَّمَا أَقْضِى بَيْنَكُمْ بِرَأْيِى فِيمَا لَمْ يُنْزَلْ عَلَيَّ فِيهِ."



١٢٠٧- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا أَوَّلُ مَنْ تَنْشَقُّ عَنْهُ الْأَرْضُ فَأُكْسَى الْحُلَّةَ مِنْ حُلَلِ الْجَنَّةِ ثُمَّ أَقُومُ عَنْ يَمِينِ الْعَرْشِ لَيْسَ أَحَدٌ مِنَ الْخَلائِقِ يَقُومُ ذَلِكَ الْمَقَامَ غَيْرِى."



١٢٠٨- حَدَّثَنِى جُنْدَبٌ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ قَبْلَ أَنْ يَمُوتَ بِخَمْسٍ وَهُوَ يَقُولُ: "إِنِّى أَبْرَأُ إِلَى اللَّهِ أَنْ يَكُونَ لِى مِنْكُمْ خَلِيلٌ فَإِنَّ اللَّهَ تَعَالَى قَدِ اتَّخَذَنِى خَلِيلاً كَمَا اتَّخَذَ إِبْرَاهِيمَ خَلِيلاً."

# HZ. PÊXEMBER
## LAYÎQTIRÎN KESÊ HURMETA WÎ WERE KIRIN

١٢٠٩- عَنْ عَائِشَةَ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أَنَّهَا قَالَتْ: ...فَقَالَتْ لَهُ خَدِيجَةُ: كَلاَّ وَاللَّهِ! مَا يُخْزِيكَ اللَّهُ أَبَدًا، إِنَّكَ لَتَصِلُ الرَّحِمَ، وَتَحْمِلُ الْكَلَّ، وَتَكْسِبُ الْمَعْدُومَ، وَتَقْرِى الضَّيْفَ، وَتُعِينُ عَلَى نَوَائِبِ الْحَقِّ...



**1205.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî îtaeta min bike (biya min bike) ewî îtaa Xwedê kiriye û kî bêemriya min bike ewî bêemriya Xwedê kiriye."*

(M4749 Muslim, Îmare, 33)



**1206.** Ebdullah bin Rafi' (r.) ji Ummu Seleme (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) ji du kesên di derheqê mîras û malên windabûyî de li hev nekirîn û hatîn cem wî gotiye: *"Di derheqê meseleyên ku derbareyê wan de wehiy tune ye ez bi re'ya xwe hukum didim."*

(D3585 Ebû Dawûd, Qeda' (Eqdiye), 7)



**1207.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê pêşî ji tirbê dirabe ez im. Piştre bedlek ji bedlên cennetê li min tê kirin, piştre jî ez li rastê Erş disekinim. Di nav mexlûqatan de ji bilî min kesekê di vî meqamî de bisekine tune ye."*

(T3611 Tirmizî, Menaqib, 1)



**1208.** Cundub (r.) gotiye: "Berî mirina wî bi pênc roja min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Ez xwe diparêzime Xwedê ku ji hewe dostekê min hebê. Lewra Xwedê Teala ez ji xwe re kirime dost mîna ku Îbrahîm ji xwe re kirî dost."*

(M1188 Muslim, Mesacid we mewd'u's-salat, 23)

# HZ. PÊXEMBER
## LAYÎQTIRÎN KESÊ HURMETA WÎ WERE KIRIN

**1209.** Dayîka muminan Aîşe (r.) gotiye: "... Xedîceyê (ji Pêxember (s.) re ) got: 'Nexêr wellahî! Xwedê tu cara te şepirze nake. Lewra tu heqê mirovatiyê pêk tînî, û bi hewara mihtacan ve diçî û bêkesan bi cil dikî û mêhvanan dihewînî û bi destê kesê bi mûsîbet digrî...'"

(B3 Buxarî, Bed'u'l-wehy, 1)



١٢١٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ ﵄ قَالَ: لَمَّا نَزَلَتْ: ﴿وَأَنْذِرْ عَشِيرَتَكَ الْأَقْرَبِينَ﴾... خَرَجَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حَتَّى صَعِدَ الصَّفَا... فَقَالَ: "أَرَأَيْتُمْ إِنْ أَخْبَرْتُكُمْ أَنَّ خَيْلاً تَخْرُجُ مِنْ سَفْحِ هَذَا الْجَبَلِ أَكُنْتُمْ مُصَدِّقِيَّ؟" قَالُوا: مَا جَرَّبْنَا عَلَيْكَ كَذِبًا...



١٢١١- عَنِ الْمِسْوَرِ بْنِ مَخْرَمَةَ وَمَرْوَانَ يُصَدِّقُ كُلُّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا حَدِيثَ صَاحِبِهِ قَالاَ: ...فَرَجَعَ عُرْوَةُ إِلَى أَصْحَابِهِ، فَقَالَ: أَيْ قَوْمِ، وَاللَّهِ لَقَدْ وَفَدْتُ عَلَى الْمُلُوكِ، وَوَفَدْتُ عَلَى قَيْصَرَ وَكِسْرَى وَالنَّجَاشِيِّ وَاللَّهِ إِنْ رَأَيْتُ مَلِكًا قَطُّ، يُعَظِّمُهُ أَصْحَابُهُ مَا يُعَظِّمُ أَصْحَابُ مُحَمَّدٍ ﷺ مُحَمَّدًا...

# HZ. PÊXEMBER
## TEYBETIYÊN WÎ YÊN VEQETANEK

١٢١٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: ...فَغَضِبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ حَتَّى عُرِفَ الْغَضَبُ فِي وَجْهِهِ ثُمَّ قَالَ: "لاَ تُفَضِّلُوا بَيْنَ أَنْبِيَاءِ اللَّهِ..."



١٢١٣- حَدَّثَنَا جَابِرُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أُعْطِيتُ خَمْسًا لَمْ يُعْطَهُنَّ أَحَدٌ مِنَ الْأَنْبِيَاءِ قَبْلِي: نُصِرْتُ بِالرُّعْبِ مَسِيرَةَ شَهْرٍ، وَجُعِلَتْ لِيَ الْأَرْضُ مَسْجِدًا وَطَهُورًا، وَأَيُّمَا رَجُلٍ مِنْ أُمَّتِي أَدْرَكَتْهُ الصَّلاَةُ فَلْيُصَلِّ، وَأُحِلَّتْ لِيَ الْغَنَائِمُ، وَكَانَ النَّبِيُّ يُبْعَثُ إِلَى قَوْمِهِ خَاصَّةً، وَبُعِثْتُ إِلَى النَّاسِ كَافَّةً، وَأُعْطِيتُ الشَّفَاعَةَ."



**1210.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Dema ayeta *'Eşîr û mirovên nêzî xwe şiyar bike'* (Şua'era, 26/214) nazil bû... Resûlê Xwedê (s.) derkete ser girê Sefayê... û got: 'Ger *ez ji we re bêjim li pişta vî girî suwariyên neyar hene wê êrîşê we bikin ma hûn ê ji min bawer bikin?'* Tevan gotin: 'Me li dora te virkirin qet nedîtiye...'"

(B4971 Buxarî, Tefsîr, (Leheb) 1)



**1211.** el-Miswer bin Mexzeme û Merwan gotina hevûdu tesdiq kirine û gotine: ".. 'Urwe zivirî cem hevalê xwe û ji wan re got: 'Gelî cemaetê! Wellahî ez bi qiralan re û bi Kisra û Qeyser û Necaşî re civiya me. Wellahî, awayê ku hevalên Muhemmed jê re hurmetkar bûn, hevalên tu kesî ji wan re ewqas hurmetkarî kirîn min nediye...'"

(B2731 Buxarî, Şurût, 15)

# HZ. PÊXEMBER
## TEYBETIYÊN WÎ YÊN VEQETANEK

**1212.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: ".. (Zilamekî Ensarî bi Cihûki re ka kîjan pêxember efdeltir e/çêtir e minaqeşe kiribûn. Dema xeber gihate Pêxember) Resûlê Xwedê (s.) enirî heta di rûyê wî de xuya kir. Piştre got: *"Pêxemberên Xwedê neêxin mijara fezîlet û bilindbûnê..."*

(M6151 Muslim, Feda'il, 159)



**1213.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Xwedê) pênc tişt dane min û berî min nedabûne tu pêxemberan: Alîkariya min bi tirsxistinê mesafeya mehekî de hatiye kirin. Rûyê erdê tev bo min bûye mizgeft û paqij, vêca ji ummeta min kî bikeve wextê nimêjê de bila nimêj bike. Xenîmet ji min re helal bûne. (Berî min) pêxember tenê bo qewmê xwe dihatine şiyandin, belê ez bo mirovan tevan hatime şiyandin. (Xwedê heqê) şefaetê daye min."*

(B438 Buxarî, Salat, 56; M1163 Muslim, Mesacid we meewdi'u's-salat, 3)



١٢١٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ مَثَلِى وَمَثَلَ الأَنْبِيَاءِ مِنْ قَبْلِى كَمَثَلِ رَجُلٍ بَنَى بَيْتًا فَأَحْسَنَهُ وَأَجْمَلَهُ إِلاَّ مَوْضِعَ لَبِنَةٍ مِنْ زَاوِيَةٍ، فَجَعَلَ النَّاسُ يَطُوفُونَ بِهِ وَيَعْجَبُونَ لَهُ، وَيَقُولُونَ: هَلاَّ وُضِعَتْ هَذِهِ اللَّبِنَةُ؟ قَالَ: فَأَنَا اللَّبِنَةُ، وَأَنَا خَاتَمُ النَّبِيِّينَ."



١٢١٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَا مِنَ الْأَنْبِيَاءِ نَبِيٌّ إِلاَّ أُعْطِيَ مِنَ الْآيَاتِ مَا مِثْلُهُ آمَنَ عَلَيْهِ الْبَشَرُ، وَإِنَّمَا كَانَ الَّذِى أُوتِيتُه وَحْيًا أَوْحَاهُ اللَّهُ إِلَيَّ فَأَرْجُو أَنْ أَكُونَ أَكْثَرَهُمْ تَابِعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ MUKEMMEL

١٢١٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ رَجُلًا قَالَ: يَا مُحَمَّدُ يَا سَيِّدَنَا وَابْنَ سَيِّدِنَا وَخَيْرَنَا وَابْنَ خَيْرِنَا فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا أَيُّهَا النَّاسُ عَلَيْكُمْ بِتَقْوَاكُمْ وَلاَ يَسْتَهْوِيَنَّكُمْ الشَّيْطَانُ أَنَا مُحَمَّدُ بْنُ عَبْدِ اللَّهِ عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ وَاللَّهِ مَا أُحِبُّ أَنْ تَرْفَعُونِي فَوْقَ مَنْزِلَتِي الَّتِي أَنْزَلَنِي اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ."



**1214.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela pêxemberên beriya min, weke mesela zilamekê xaniyek gelek xweşik û bêqusûr ava kiriye, belê cihê kerpîçekî hiştiye vale. Vêca mirovan jî bi heyranî û bi dilçûyînê li derdora wî xaniyî re diçûn û dihatin. (Dema ew cihê vale didîtin) digotin: 'Ma çima cihê vî kerpîçî jî nehatiye dagirtin?'* Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ez ew kerpîç im û ez pêxemberê dawî me.'"*

(B3535 Buxarî, Menaqib, 18; M5963 Muslim, Feda'il, 23)



**1215.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Tu pêxember nînin ku ji bo mirov baweriyê pê bînin (Xwedê) mucize nedabinê. Mucîza (Xwedê) ku daye min wehy e. Vêca ez hêvî dikim ku Roja Qiyametê di nav pêxemberan de yê ummeta wî zêdetir ez bim."*

(B4981 Buxarî, Feda'îlu'l-Qur'an, 1)

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ MUKEMMEL

**1216.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku zilamekî got: "Ya Muhemmed! Ya serwerê me, kurê serwerê me, çêtirînê me, kurê çêtirînê me!" Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: "Gelî mirovan! Emanet teqwatiya we, jê dernekevin! Nebe ku şeytan we ji rê derêxe! Ez Muhemmed kurê Ebdullah im. Ebdê Xwedê û Resûlê wî me. Wellahî, ez naxwazim hûn min deynin meqameke ser meqamê ku Xwedê daye min!"

(HM12579 Ibn Hanbel, III, 154)



١٢١٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: سَمِعَ عُمَرَ ﵁ يَقُولُ عَلَى الْمِنْبَرِ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ تُطْرُونِى كَمَا أَطْرَتِ النَّصَارَى ابْنَ مَرْيَمَ، فَإِنَّمَا أَنَا عَبْدُهُ، فَقُولُوا: عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ."



١٢١٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: سُئِلَتْ مَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعْمَلُ فِي بَيْتِهِ؟ قَالَتْ: كَانَ بَشَرًا مِنْ الْبَشَرِ يَفْلِي ثَوْبَهُ وَيَحْلُبُ شَاتَهُ وَيَخْدُمُ نَفْسَهُ.



١٢١٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: صَلَّى بِنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ خَمْسًا. فَقُلْنَا: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَزِيدَ فِى الصَّلاَةِ؟ قَالَ: "وَمَا ذَاكَ؟" قَالُوا: صَلَّيْتَ خَمْسًا. قَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ أَذْكُرُ كَمَا تَذْكُرُونَ وَأَنْسَى كَمَا تَنْسَوْنَ." ثُمَّ سَجَدَ سَجْدَتَيِ السَّهْوِ.



١٢٢٠- عَنِ الْأَغَرِّ الْمُزَنِيِّ وَكَانَتْ لَهُ صُحْبَةٌ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّهُ لَيُغَانُ عَلَى قَلْبِى وَإِنِّى لَأَسْتَغْفِرُ اللَّهَ فِى الْيَوْمِ مِائَةَ مَرَّةٍ."

**1217.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku ji Umer (r.) bihîstiye li ser mînberê digot: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: '*Di medhê min de zêdegaviya nekin weke ku Fileya di medhê kurê Meryemê (Îsa) de zêdegavi kirin. Bêguman ez tenê ebdê wî me. Bêjin: Ew ebdê Xwedê û resûlê wî ye.*'"

(B3445 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)



**1218.** Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Ji min hate pirsîn: 'Ma Resûlê Xwedê (s.) li mala xwe çi dikir?' Aîşeyê got: 'Ew weke herkesi însan bû. Cilê xwe paqij dikir, miha xwe diduşt û îhtiyaciyên xwe pêk tanî.'"

(HM26724 Ibn Hanbel, VI, 256)



**1219.** Ebdullah bin Mesûd (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) nimêj pênc riket bi me da kirin. Me got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma nimêj zêde bûye?' Got: *'Ma çi bûye?'* Gotin: 'Te pênc riket kirin.' Resûlê Xwedê (s.) got: '*Ez jî weke we beşer im. Weke ku tê bîra we tê bîra min jî û weke ku hûn ji bîr dikin ez jî ji bîr dikim.*' Piştre her du secdeyên sehwê kirin."

(M1284 Muslim, Mesacid ve meewdi'u's-salat, 93)



**1220.** Ji sehabiyekê navê wî el-Exer el-Muzenî hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Carna dilê min tê girtin. Vêca ez di rojê de sed carî ji Xwedê efû û mexfîretê dixwazim.*"

(M6858 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 41)

# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ DAWÎ YÊ JI ALEMÊ RE REHMET

١٢٢١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: سَمِعَ عُمَرَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ يَقُولُ عَلَى الْمِنْبَرِ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "لاَ تُطْرُونِى كَمَا أَطْرَتِ النَّصَارَى ابْنَ مَرْيَمَ فَإِنَّمَا أَنَا عَبْدُهُ، فَقُولُوا: عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ."



١٢٢٢- رَافِعُ بْنُ خَدِيجٍ قَالَ: قَدِمَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ الْمَدِينَةَ... فَقَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ إِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ مِنْ دِينِكُمْ فَخُذُوا بِهِ وَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ مِنْ رَأْيٍ فَإِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ."



١٢٢٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: إِنَّ مَثَلِي وَمَثَلَ الْأَنْبِيَاءِ مِنْ قَبْلِي كَمَثَلِ رَجُلٍ بَنَى بَيْتًا فَأَحْسَنَهُ وَأَجْمَلَهُ إِلَّا مَوْضِعَ لَبِنَةٍ مِنْ زَاوِيَةٍ فَجَعَلَ النَّاسُ يَطُوفُونَ بِهِ وَيَعْجَبُونَ لَهُ وَيَقُولُونَ هَلَّا وُضِعَتْ هَذِهِ اللَّبِنَةُ؟ قَالَ: فَأَنَا اللَّبِنَةُ وَأَنَا خَاتِمُ النَّبِيِّينَ."



# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ DAWÎ YÊ JI ALEMÊ RE REHMET

**1221.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku ji Umer (r.) bihîstiye li ser mînberê digot: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: '*Di medhê min de zêdegaviya nekin weke ku Fileya di medhê kurê Meryemê (Îsa) de zêdegavi kirin. Bêguman ez tenê ebdê wî me. Bêjin: Ew ebdê Xwedê û resûlê wî ye.*'"

(B3445 Buxarî, Ehadîsu'l-enbiya, 48)



**1222.** Rafi' bin Xedîc (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê hate Medînê... û got: "*Ez tenê beşer im, heke min emrê we bi tiştek ku dînê we eleqdar dike kir ew ê bikin, heke min li gor fikr û ramana xwe emrê we bi tiştekî kir (zanibin) ku ez beşer im.*"

(M6127 Muslim, Feda'il, 140)



**1223.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mesela min û mesela pêxemberên beriya min, weke mesela zilamekî ku xaniyekî gelek xweşik û bêqusûr ava kiriye, belê cihê kerpîçekî hiştiye vale. Vêca mirovan jî bi heyranî û bi dilçûyînê li derdora wî xaniyî re diçûn û dihatin. (Dema ew cihê vale didîtin) digotin: 'Ma çima cihê vî kerpîçî jî ne hatiye dagirtin?'* Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: '*Ez ew kerpiç im û ez pêxemberê dawî me.*'"

(B3535 Buxarî, Menaqib, 18)



١٢٢٤- عَنْ أَبِي مُوسَى عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا مَثَلِي وَمَثَلُ مَا بَعَثَنِي اللَّهُ بِهِ كَمَثَلِ رَجُلٍ أَتَى قَوْمًا فَقَالَ: يَا قَوْمِ إِنِّي رَأَيْتُ الْجَيْشَ بِعَيْنَيَّ، وَإِنِّي أَنَا النَّذِيرُ الْعُرْيَانُ فَالنَّجَاءَ. فَأَطَاعَهُ طَائِفَةٌ مِنْ قَوْمِهِ فَأَدْلَجُوا، فَانْطَلَقُوا عَلَى مَهَلِهِمْ فَنَجَوْا، وَكَذَّبَتْ طَائِفَةٌ مِنْهُمْ فَأَصْبَحُوا مَكَانَهُمْ، فَصَبَّحَهُمُ الْجَيْشُ، فَأَهْلَكَهُمْ وَاجْتَاحَهُمْ، فَذَلِكَ مَثَلُ مَنْ أَطَاعَنِي، فَاتَّبَعَ مَا جِئْتُ بِهِ، وَمَثَلُ مَنْ عَصَانِي وَكَذَّبَ بِمَا جِئْتُ بِهِ مِنَ الْحَقِّ."



١٢٢٥- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِي فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ، وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ عَصَى اللَّهَ..."

# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ HEQ Û HUQÛQÊ

١٢٢٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: خَطَبَنَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ... ثُمَّ قَالَ: "ذَرُونِي مَا تَرَكْتُكُمْ فَإِنَّمَا هَلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمْ بِكَثْرَةِ سُؤَالِهِمْ وَاخْتِلاَفِهِمْ عَلَى أَنْبِيَائِهِمْ فَإِذَا أَمَرْتُكُمْ بِشَيْءٍ فَأْتُوا مِنْهُ مَا اسْتَطَعْتُمْ وَإِذَا نَهَيْتُكُمْ عَنْ شَيْءٍ فَدَعُوهُ."



**1224.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela wezîfeya Xwedê daye min, weke mesela wî zilamê ku çûye cem qewmekî û ji wan re gotiye: 'Gelî qewm! Min leşker (neyar) bi çavên xwe dît. Bêguman ez şiyarvaneke diyar im. Lezê bikin, xwe xilas bikin. Hinekan ji qewmê wî, bi ya wî kirin bi şev hêdî hêdî derketin û revîn xwe xilaskirin. Hinekan jî bawerî pê neanîn di cihê xwe de man heta li wan bû sibeh. Vêca leşkerê dijmin ber bi sibehê re bi ser wan de girt ew hemî kuştin û helak kirin. Vêca mesala min û mesala wan kesên ku bi ya min kirin û bûne peyrewê dînê min anî û mesela wan kesên ku bi ya min nekirin û ew dînê heq ê min anî tekzîb kirin ev e."*

(B7283 Buxarî, I'tîsam, 2; M5954 Muslim, Feda'il, 16)



**1225.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî îtaeta min bike (bi ya min bike) ewî îtaa Xwedê kiriye û kî bêemriya min bike ewî bêemriya Xwedê kiriye."*

(M4749 Muslim, Îmare, 33; B7137 Buxarî, Ehkam, 1)

# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ HEQ Û HUQÛQÊ

**1226.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji me re xutbeyek xwend... Piştre got: *'Hindî ku min hûn serbest hiştin, hûn jî min rihet bihêlin. Bêguman qewmên beriya we derbasbûyîn, bi sebeb pirsiyarên zêde û îxtîlafa wan di gotinên pêxemberê wan de helak bûne. Dema min emrê we bi kirina tiştekî kir, bi qeder we karî pêk bînin û dema min men'a we ji kirina tiştekî kir dev jê berdin.'"*

(M3257 Muslim, Hec, 412)



١٢٢٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ رَافِعٍ قَالَ: سَمِعْتُ أُمَّ سَلَمَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ بِهَذَا الْحَدِيثِ قَالَ: يَخْتَصِمَانِ فِى مَوَارِيثَ وَأَشْيَاءَ قَدْ دَرَسَتْ فَقَالَ: "إِنِّى إِنَّمَا أَقْضِى بَيْنَكُمْ بِرَأْيِى فِيمَا لَمْ يُنْزَلْ عَلَيَّ فِيهِ."



١٢٢٨- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ، وَإِنَّكُمْ تَخْتَصِمُونَ، وَلَعَلَّ بَعْضَكُمْ أَنْ يَكُونَ أَلْحَنَ بِحُجَّتِهِ مِنْ بَعْضٍ، وَأَقْضِيَ لَهُ عَلَى نَحْوِ مِمَّا أَسْمَعُ، فَمَنْ قَضَيْتُ لَهُ مِنْ حَقِّ أَخِيهِ شَيْئًا، فَلاَ يَأْخُذْ، فَإِنَّمَا أَقْطَعُ لَهُ قِطْعَةً مِنَ النَّارِ."

# HZ. PÊXEMBER
## AWAYÊ XEBERDANÊ; NAZIK, BI PÎVAN Û ZELAL

١٢٢٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...أُعْطِيتُ جَوَامِعَ الْكَلِمِ..."



١٢٣٠- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ كَانَ يُحَدِّثُ حَدِيثًا لَوْ عَدَّهُ الْعَادُّ لَأَحْصَاهُ.



**1227.** Ebdullah bin Rafi‘ (r.) ji Ummu Seleme (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) ji du kesên di derheqê mîras û malên windabûyî de li hev nekirin û hatin cem wî gotiye: *“Di derheqê meseleyên ku derbareyê wan de wehiy tune ye ez bi re’ya xwe hukum didim.”*

(D3585 Ebû Dawûd, Qeda’ (Eqdiye), 7)



**1228.** Ji Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“Bêguman ez beşer im. Hûn de‘weyên xwe tênine ji min re. Vêca dibe hinek ji we ji hinekan hostatir bin di îfadekirina delîla xwe de û ez jî li gora bihîstina xwe hukum didim. Heke ez heqê birayê yekî ji we bidime kî ji we, bila negire. Lewra (bi vî hukmî) min qetek agir dayiyê.”*

(B6967 Buxarî, Hiyel, 10)

# HZ. PÊXEMBER
## AWAYÊ XEBERDANÊ; NAZIK, BI PÎVAN Û ZELAL

**1229.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *“...Gotinên têrme‘ne bexşê min bûne...”*

(M1167 Muslim, Mesacid we mewdi‘u’s-salat, 5)



**1230.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: “Resûlê Xwedê (s.) bi şiklek wisa diaxifî, heke yekî bixwesta kelîmeyên wî bihijmêre wê karîba bihijmêre.”

(B3567 Buxarî, Menaqib, 23)



١٢٣١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ كَلاَمُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كَلاَمًا فَصْلاً يَفْهَمُهُ كُلُّ مَنْ سَمِعَهُ.



١٢٣٢- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ : أَنَّهُ كَانَ إِذَا تَكَلَّمَ بِكَلِمَةٍ أَعَادَهَا ثَلاَثًا حَتَّى تُفْهَمَ...

# HZ. PÊXEMBER
## ADABÊ XWARINÊ; HETA BIRÇÎ NEDIBÛ NE DIXWAR, HÊ TÊR NEBÛYÎ DIRABÛ

١٢٣٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ طَعَامًا فَلْيَقُلْ بِسْمِ اللَّهِ، فَإِنْ نَسِيَ فِى أَوَّلِهِ فَلْيَقُلْ بِسْمِ اللَّهِ فِى أَوَّلِهِ وَآخِرِهِ."



١٢٣٤- عَنْ أَبِى بَكْرِ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ عَنْ جَدِّهِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ فَلْيَأْكُلْ بِيَمِينِهِ وَإِذَا شَرِبَ فَلْيَشْرَبْ بِيَمِينِهِ فَإِنَّ الشَّيْطَانَ يَأْكُلُ بِشِمَالِهِ وَيَشْرَبُ بِشِمَالِهِ."



١٢٣٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: مَا عَابَ النَّبِيُّ ﷺ طَعَامًا قَطُّ، إِنِ اشْتَهَاهُ أَكَلَهُ، وَإِنْ كَرِهَهُ تَرَكَهُ.



**1231.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Xeberdana Resûlê Xwedê (s.) wisa zelal û diyar bû, çi kesê bihîstiba fêhm dikir."

(D4839 Ebû Dawûd, Edeb, 18)



**1232.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) axaftinek kiriba, ji bo ku baş were fêhmê sê caran dubare dikir...

(B95 Buxarî, Ilim, 30)

# HZ. PÊXEMBER
## ADABÊ XWARINÊ; HETA BIRÇÎ NEDIBÛ NE DIXWAR, HÊ TÊR NEBÛYÎ DIRABÛ

**1233.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Pêxember (s.) wiha gotiye: *"Dema yek ji we xwarinê bixwe bila bêje 'Bîsmîllah' (Bi navê Xwedê) heke di serî de ji bîr kir bêje, bila wiha bêje: 'Bîsimîllah fî ewwelih we axirih' (Di serî de jî û di dawî de jî bi navê Xwedê)"*

(T1858 Tirmizî, Et'ime, 47)



**1234.** Ebû Bekr bin Ubeydîllah bin Ebdîllah bin Umer ji kalkê xwe Ibn Umer (r.) ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji we xwarin xwar bila bi destê xwe yê rastê bixwe û dema vexwar bila bi deste xwe yê rastê vexwe. Lewra şeytan bi destê çepê dixwe û divexwe."*

(M5265 Muslim, Eşribe, 105)



**1235.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) tu caran eybê tu xwarinê nedigot. Heke dilê wî çûbayê dixwar û neçûbayê nedixwar."

(B5409 Buxarî, Et'ime, 21; M5383 Muslim, Eşribe, 188)



١٢٣٦- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا فَرَغَ مِنْ طَعَامِهِ قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى أَطْعَمَنَا وَسَقَانَا وَجَعَلَنَا مُسْلِمِينَ."



١٢٣٧- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ لَيَرْضَى عَنِ الْعَبْدِ أَنْ يَأْكُلَ الْأَكْلَةَ فَيَحْمَدُهُ عَلَيْهَا أَوْ يَشْرَبَ الشَّرْبَةَ فَيَحْمَدُهُ عَلَيْهَا."

# HZ. PÊXEMBER
## LIXWEKIRIN: PAQIJ Û SADE

١٢٣٨- عَنْ أَبِى الْأَحْوَصِ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فِى ثَوْبٍ دُونٍ فَقَالَ: "أَلَكَ مَالٌ؟" قَال: نَعَمْ. قَالَ: "مِنْ أَيِّ الْمَالِ؟" قَالَ: قَدْ آتَانِيَ اللَّهُ مِنَ الْإِبِلِ وَالْغَنَمِ وَالْخَيْلِ وَالرَّقِيقِ قَالَ: "فَإِذَا آتَاكَ اللَّهُ مَالاً فَلْيُرَ أَثَرُ نِعْمَةِ اللَّهِ عَلَيْكَ وَكَرَامَتِهِ."



١٢٣٩- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "كُلُوا وَتَصَدَّقُوا وَالْبَسُوا فِى غَيْرِ إِسْرَافٍ وَلاَ مَخِيلَةٍ."



**1236.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) xwarina xwe xilas dikir, ev dua dixwend: *"Hemd ji wî Xwedayî re be ku xwarin daye me, vexwarin daye me û em kirine Misilman."*

(D3850 Ebû Dawûd, Et'ime, 52; T3457 Tirmizî, De'ewat, 55)



**1237.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê ji wî ebdê ku piştî xwarin xwar an jî vexwarinek vexwar hemdê Xwedê dike razî dibe."*

(M6932 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 89)

# HZ. PÊXEMBER
## LIXWEKIRIN: PAQIJ Û SADE

**1238.** Ji Ebu'l-Ehwes hatiye rîwayetkirin ku bavê wî gotiye: "Ez bi qiyafetek bêserûber çûme cem Resûlê Xwedê (s.) Vêca ji min pirsî: *"Ma malê te heye?"* Min got: "Belê heye" Got *"Ma te çi mal heye?"* Min got: "Xwedê deveh, pez, hesp û kole dane min." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Dema Xwedê mal da te, bila eserê nimet û comerdiya Xwedê dayî te li ser te were xuya kirin."*"

(D4063 Ebû Dawûd, Libas, 14; T2006 Tirmizî, Birr we sile, 63)



**1239.** 'Emr bin Şueyb, bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêyî ku hûn îsrafê bikin an jî ser xwe biçin, bixwin sedeqeyan bidin û li xwe bikin."*

(N2560 Nesaî, Zekat, 66)



١٢٤٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِى قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ" قَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُهُ حَسَنًا وَنَعْلُهُ حَسَنَةً. قَالَ" "إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ الْكِبْرُ بَطَرُ الْحَقِّ وَغَمْطُ النَّاسِ."



١٢٤١- عَنْ سَالِمِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ عَنْ أَبِيهِ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ جَرَّ ثَوْبَهُ خُيَلاَءَ لَمْ يَنْظُرِ اللَّهُ إِلَيْهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ." قَالَ أَبُو بَكْرٍ: يَا رَسُولَ اللَّهِ إِنَّ أَحَدَ شِقَّىْ إِزَارِى يَسْتَرْخِى، إِلاَّ أَنْ أَتَعَاهَدَ ذَلِكَ مِنْهُ. فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ "لَسْتَ مِمَّنْ يَصْنَعُهُ خُيَلاَءَ."



١٢٤٢- عَنِ الْبَرَاءِ قَالَ: مَا رَأَيْتُ مِنْ ذِى لِمَّةٍ فِى حُلَّةٍ حَمْرَاءَ أَحْسَنَ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ...

# HZ. PÊXEMBER
## TIŞTÊN WÎ; MALÊ QENC JI KESÊ QEDC RE ÇI XWEŞ E!

١٢٤٣- عَنْ مُطَرِّفٍ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ يَقْرَأُ ﴿أَلْهَاكُمُ التَّكَاثُرُ﴾ قَالَ: "يَقُولُ ابْنُ آدَمَ: مَالِى، مَالِى قَالَ: وَهَلْ لَكَ، يَا ابْنَ آدَمَ مِنْ مَالِكَ إِلاَّ مَا أَكَلْتَ فَأَفْنَيْتَ، أَوْ لَبِسْتَ فَأَبْلَيْتَ، أَوْ تَصَدَّقْتَ فَأَمْضَيْتَ؟"



**1240.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di dilê wî de misqala zerre kibir hebe naçê cennetê."* Vêca zilamekî got: 'Bêguman mirov hez dike ku cil û bergên wî û pêlava wî xweşik be.' Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bêguman Xwedê xweşik e hez ji xweşiktiyê dike. Kibir redkirina heqiyê ye û piçûkdîtina mirovan e."*

(M265 Muslim, Îman, 147)



**1241.** Ji Salim bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku bavê wî gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) wiha gotiye: *'Kesê ji bitrî cilê xwe dirêj bike heta bi erdê ve bixirihê, Xwedê Roja Qiyametê li rûyê wî meyze nake."* Ebû Bekir (r.) got: "Ya Resûlê Xwedê! Heke ez lê miqewt nebim û muhafeze nekim milek ji kirasê min mitleqa bi erdê ve dixirikê." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Tu ne ji wan kesan î ku ji bitrî dikin."*

(B5784 Buxarî, Libas, 2)



**1242.** Berra' (bin 'Azîb) (r.) gotiye: "Keseke por ser mila de berdayî û cilê sor li xwe kirî ji Resûlê Xwedê (s.) xweşiktir min nedîtiye..."

(T1724 Tirmizî, Libas, 4)

# HZ. PÊXEMBER
## TIŞTÊN WÎ; MALÊ QENC JI KESÊ QEDC RE ÇI XWEŞ E!

**1243.** Muterrif (r.) ji bavê xwe ragihandiye ku gotiye: "Ez çûme cem Resûlê Xwedê (s.) sûretê Elhakumu't-tekasur (fexra bi zêdebûnê hûn mijûl kirin.) dixwend. Piştre got: *"Însan dibêje: 'Malê min malê min! Ma gelî mirovan! Ji malê te ji bilî yê te xwarî û xilas kirî, an li xwe kirî û kevin kirî an jî sedeqe dayî û (bo xêra wê li axîretê bistînî) ji pêşve şiyandî te mal heye?'"*

(M7420 Muslim, Zuhd ve reqa'iq, 3)



١٢٤٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "تَعِسَ عَبْدُ الدِّينَارِ وَالدِّرْهَمِ وَالْقَطِيفَةِ وَالْخَمِيصَةِ، إِنْ أُعْطِيَ رَضِيَ، وَإِنْ لَمْ يُعْطَ لَمْ يَرْضَ."



١٢٤٥- حَدَّثَنِي أَبُو إِسْحَاقَ قَالَ: سَمِعْتُ عَمْرَو بْنَ الْحَارِثِ قَالَ: مَا تَرَكَ النَّبِيُّ ﷺ إِلاَّ سِلاَحَهُ وَبَغْلَتَهُ الْبَيْضَاءَ، وَأَرْضًا تَرَكَهَا صَدَقَةً.



١٢٤٦- حَدَّثَنَا مُوسَى بْنُ عَلِيٍّ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَمِعْتُ عَمْرَو بْنَ الْعَاصِ يَقُولُ: بَعَثَ إِلَيَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "خُذْ عَلَيْكَ ثِيَابَكَ وَسِلاَحَكَ ثُمَّ ائْتِنِي" فَأَتَيْتُهُ وَهُوَ يَتَوَضَّأُ فَصَعَّدَ فِيَّ النَّظَرَ ثُمَّ طَأْطَأَ فَقَالَ: "إِنِّي أُرِيدُ أَنْ أَبْعَثَكَ عَلَى جَيْشٍ فَيُسَلِّمَكَ اللَّهُ وَيُغْنِمَكَ وَأَرْغَبُ لَكَ مِنَ الْمَالِ رَغْبَةً صَالِحَةً" قَالَ: قُلْتُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا أَسْلَمْتُ مِنْ أَجْلِ الْمَالِ وَلَكِنِّي أَسْلَمْتُ رَغْبَةً فِي الْإِسْلَامِ وَأَنْ أَكُونَ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "يَا عَمْرُو نِعْمَ الْمَالُ الصَّالِحُ لِلْمَرْءِ الصَّالِحِ."

## HZ. PÊXEMBER
### XANIMÊN WÎ; DAYÎKÊN MUMINA

١٢٤٧- عَنْ عَلِيِّ بْنِ أَبِي طَالِبٍ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُ نِسَائِهَا مَرْيَمُ، وَخَيْرُ نِسَائِهَا خَدِيجَةُ."



**1244.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heyf û mixabin ji koleyê dînar û dirhem, qedîfe û cilê neqişkirî re! Heke tiştek danê, wê memnûn bibe û heke nedanê memnûn nabe."*

(B2886 Buxarî, Cîhad 70)



**1245.** Ji Ebû Îshaq hatiye ragihandin ku ji 'Emr bin el-Haris bihîstiye digot: "Resûlê Xwedê (s.) piştî mirina xwe ji bilî sîlehê xwe, hêstira xwe ya sipî û miqdarek erd tiştek ne hiştibû. Yê hiştî jî kire sedeqe."

(B3098 Buxarî, Fardu'l-humus, 3)



**1246.** Mûsa bin Elî ji bavê xwe rîwayet kiriye ku ji 'Emr bin el-'As bihîstiye digot: "Resûlê Xwedê (s.) xeber şiyande ji min re ku: *'Cilê xwe wergire û sîlehê xwe jî hilgire û were cem min.'* Ez hatim cem wî, destnimêj digirt. Serê xwe rakir li min meyze kir, piştre jî serê xwe da ber xwe û got: *'Ez dixwazim te li ser serê leşkerekî bişînim. Vêca Xwedê silametiyê bide te û xenîmetê bixe nesîbê te. Ez bi niyetek baş dixwazim tu bibî xweyî mal.'* Min got: 'Ey Resûlê Xwedê! Ez ji bo bidestkirina mal misilman nebûme. Belê ez ji bo hezkirina Îslamê û daxwaziya ku bi Resûlê Xwedê re bim bûme misilman.' Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ya 'Emr! Malê qenc ji mirovê qenc re çi (nimetek) baş e!"*

(HM17915 Ibn Hanbel, IV, 197)

# HZ. PÊXEMBER
## XANIMÊN WÎ; DAYÎKÊN MUMINA

**1247.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Meryem xêrtirê jinên (dewra xwe de) ye û Xedîce xêrtirê jinên (dewra xwe de) ye."*

(B3815 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 20)



١٢٤٨- حدَّثَتْنَا صَفِيَّةُ بِنْتُ حُيَيٍّ قَالَتْ: دَخَلَ عَلَيَّ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَقَدْ بَلَغَنِى عَنْ حَفْصَةَ وَعَائِشَةَ كَلاَمٌ فَذَكَرْتُ ذَلِكَ لَهُ فَقَالَ: "أَلاَ قُلْتِ وكَيْفَ تَكُونَانِ خَيْرًا مِنِّى؟ وَزَوْجِى مُحَمَّدٌ وَأَبِى هَارُونُ وَعَمِّى مُوسَى..."



١٢٤٩- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: ...فَكَانَتْ زَيْنَبُ تَفْخَرُ عَلَى أَزْوَاجِ النَّبِيِّ ﷺ تَقُولُ: زَوَّجَكُنَّ أَهَالِيكُنَّ، وَزَوَّجَنِى اللَّهُ تَعَالَى مِنْ فَوْقِ سَبْعِ سَمَوَاتٍ.



١٢٥٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "فَضْلُ عَائِشَةَ عَلَى النِّسَاءِ كَفَضْلِ الثَّرِيدِ عَلَى سَائِرِ الطَّعَامِ."

# HZ. PÊXEMBER
## MÊREK BAŞ, BAVEK BI ŞEFQET

١٢٥١- عَنْ عَائِشَةَ، قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خَيْرُكُمْ خَيْرُكُمْ لِأَهْلِهِ، وَأَنَا خَيْرُكُمْ لِأَهْلِى..."



١٢٥٢- عَنِ الْأَسْوَدِ بْنِ يَزِيدَ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا: مَا كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَصْنَعُ فِى الْبَيْتِ؟ قَالَتْ: كَانَ يَكُونُ فِى مِهْنَةِ أَهْلِهِ، فَإِذَا سَمِعَ الْأَذَانَ خَرَجَ.



**1248.** Sefiyye bint Huyey (r.) gotiye: "Rojekî Resûlê Xwedê (s.) hate cem min. Hinek gotinên (nexweş) di derheqê min de ji teref Hefse û Aîşe ve gihabûne min. Vêca min ew ji Resûlê Xwedê re got. Ewî got: *'Te jî ji wan re gotiba: 'Mêrê min Muhemmed, bavê min Harûn û mamê min Mûsa ye. Ka vêca hûn ê çawa ji min çêtir bin…?'"*

(T3892 Tirmizî, Menaqib, 63)



**1249.** Enes (r.) gotiye: "… (Xanima Resûlê Xwedê) Zeyneb (binti Cehş), pêşber xanimên wî yên dîtir de pesnê xwe dida û digot: "Malbata we hûn bi Pêxember (s.) re zewicandine. Belê ya min Xwedê Teala li ser heft tebeqê asîmanan ez pê re zewicandime."

(B7420 Buxarî, Tewhîd, 22)



**1250.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Fedla Aîşe li ser jinên dîtir weke fedla tirîdê li ser xwarinên dîtir e."*

(M6299 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 89)

# HZ. PÊXEMBER
## MÊREK BAŞ, BAVEK BI ŞEFQET

**1251.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qenctirê we ew kesê ji maliyê xwe re qenctir e. Ez ji maliyê xwe re qenctirê hewe me…"*

(T3895 Tirmizî, Menaqib, 63)



**1252.** El-Eswed bin Yezîd (r.) gotiye: "Min ji Aîşe (r.) pirsî: 'Ma Resûlê Xwedê (s.) li malê çi kar dikir?" Aîşe got: 'Kar û barên maliyên xwe dikir. Dema dengê bangê dikir (ji bo nimêjê) ji mal derdiket.'"

(B5363 Buxarî, Nefeqat, 8)



١٢٥٣- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا ضَرَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ شَيْئًا قَطُّ بِيَدِهِ، وَلاَ امْرَأَةً، وَلاَ خَادِمًا، إِلاَّ أَنْ يُجَاهِدَ فِى سَبِيلِ اللَّهِ...



١٢٥٤- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا شَبِعَ آلُ مُحَمَّدٍ ﷺ مُنْذُ قَدِمَ الْمَدِينَةَ مِنْ طَعَامِ بُرٍّ ثَلاَثَ لَيَالٍ تِبَاعًا حَتَّى قُبِضَ.

# HZ. PÊXEMBER
## ZAROKÊN WÎ; CÎGERPAREYÊN WÎ

١٢٥٥- عَنْ فَاطِمَةَ بِنْتِ الْحُسَيْنِ عَنْ أَبِيهَا الْحُسَيْنِ بْنِ عَلِيٍّ قَالَ لَمَّا تُوُفِّيَ الْقَاسِمُ ابْنُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَتْ خَدِيجَةُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ دَرَّتْ لُبَيْنَةُ الْقَاسِمِ فَلَوْ كَانَ اللَّهُ أَبْقَاهُ حَتَّى يَسْتَكْمِلَ رَضَاعَهُ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ تَمَامَ رَضَاعِهِ فِى الْجَنَّةِ."



١٢٥٦- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قَالَ: لَمَّا وُضِعَتْ أُمُّ كُلْثُومٍ ابْنَةُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي الْقَبْرِ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِنْهَا خَلَقْنَاكُمْ وَفِيهَا نُعِيدُكُمْ وَمِنْهَا نُخْرِجُكُمْ تَارَةً أُخْرَى."



١٢٥٧- عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ عَائِشَةَ أَنَّهَا قَالَتْ مَا رَأَيْتُ أَحَدًا كَانَ أَشْبَهَ سَمْتًا وَدَلاًّ وَهَدْيًا... بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ مِنْ فَاطِمَةَ كَرَّمَ اللَّهُ وَجْهَهَا كَانَتْ إِذَا دَخَلَتْ عَلَيْهِ قَامَ إِلَيْهَا فَأَخَذَ بِيَدِهَا وَقَبَّلَهَا وَأَجْلَسَهَا فِى مَجْلِسِهِ وَكَانَ إِذَا دَخَلَ عَلَيْهَا قَامَتْ إِلَيْهِ فَأَخَذَتْ بِيَدِهِ فَقَبَّلَتْهُ وَأَجْلَسَتْهُ فِى مَجْلِسِهَا.



**1253.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ji bilî cîhadkirina di rêya Xwedê de, Resûlê Xwedê (s.) bi destê xwe li tu tiştî; li tu kesî nedaye. Ne li pîreka ne jî li xizmetçiya..."

(M6050 Muslim, Feda'il, 79)



**1254.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ji roja hatî Medînê heta wefata wî, malabata Muhemmed (s.) sê rojan li pey hev nanê genim nexwarine."

(B6454 Buxarî, Riqaq, 17; M7443 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 20)

# HZ. PÊXEMBER
## ZAROKÊN WÎ; CÎGERPAREYÊN WÎ

**1255.** Fatîme bint Huseyn, ji bavê xwe el-Huseyn bin Elî (r.) rîwayet kiriye ku dema kurê Resûlê Xwedê (s.) el-Qasîm wefat kir, Xedîce (r.) got: "Ya Resûlê Xwedê! Heta niha şîrê Qasîm diherike. Xwezî Xwedê ew heta ji şîr vebûya li heyatê hiştiba. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ewê di cennetê de şîrmijandina xwe temam bike."*

(ÎM1512 Ibn Maceh, Cena'iz, 27)



**1256.** Ebû Umame (r.) gotiye: "Dema qîza Resûlê Xwedê (s.) Ummu Kulsûm êxistine qebrê de Pêxember (s.) ev ayet xwend: *"Me hûn ji wê (axê) afirandine; em ê cardî we vegerînine wê û carek dîtir em ê we ji wê derêxînin."*

(Tâ-Hâ, 20/55; HM22540 Ibn Hanbel, V, 254)



**1257.** Dayîka mumina Hz. Aîşe (r.) dibêje: "Min ji cihet hal û hereket û rasterê ve kesek weke Fatîme (Xwedê rûyê wê geş bike) bişibihe Pêxember (s.) nedîtiye. Dema Fatîme biçûya cem Pêxember (s.) pêşve dirabû şipiya bi destê wê digirt, maçî dikir û li cihê xwe dirûniştand. Dema Resûlê Xwedê (s.) çûba cem Fatîme, ew jî pêşve dirabû şipiya, bi destê wî digirt, maçî dikir û li cihê xwe dirûniştand."

(D5217 Ebû Dawûd, Edeb, 143, 144)



١٢٥٨- عَنْ عَدِيِّ بْنِ ثَابِتٍ قَالَ: سَمِعْتُ الْبَرَاءَ قَالَ: لَمَّا مَاتَ إِبْرَاهِيمُ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ لَهُ مُرْضِعًا فِى الْجَنَّةِ."



١٢٥٩- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "وُلِدَ لِيَ اللَّيْلَةَ غُلاَمٌ فَسَمَّيْتُهُ بِاسْمِ أَبِى إِبْرَاهِيمَ." ... قَالَ أَنَسٌ: لَقَدْ رَأَيْتُهُ يَكِيدُ بِنَفْسِهِ بَيْنَ يَدَىْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَدَمَعَتْ عَيْنَا رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "تَدْمَعُ الْعَيْنُ وَيَحْزَنُ الْقَلْبُ وَلاَ نَقُولُ إِلاَّ مَا يَرْضَى رَبُّنَا إِنَّا بِكَ يَا إِبْرَاهِيمُ لَمَحْزُونُونَ."

# HZ. PÊXEMBER
## BI ZAROK Û BI XORTAN RE WEKE HEVALEKÎ
### Ji Zarokan re: Mihebbet, Şefqet û Îltîfat – Ji Xortan re: Rûmet, Ewleyî û Cesaret

١٢٦٠- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ زَيْدٍ رضي الله عنهما: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَأْخُذُنِى فَيُقْعِدُنِى عَلَى فَخِذِهِ، وَيُقْعِدُ الْحَسَنَ بْنَ عَلِيٍّ عَلَى فَخِ ذِهِ الآخَرِ، ثُمَّ يَضُمُّهُمَا، ثُمَّ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ ارْحَمْهُمَا فَإِنِّى أَرْحَمُهُمَا."



١٢٦١- عَنْ أَبِى قَتَادَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يُصَلِّى، وَهُوَ حَامِلٌ أُمَامَةَ بِنْتَ زَيْنَبَ بِنْتِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ، وَلأَبِى الْعَاصِ بْنِ الرَّبِيعِ، فَإِذَا قَامَ حَمَلَهَا وَإِذَا سَجَدَ وَضَعَهَا.



**1258.** 'Edî bin Sabit dibêje: "Min ji el-Bera' bihîst digot: 'Dema kurê Resûlê Xwedê (s.) Îbrahîm wefat kir, got: *'Bêguman yeka ku di cennetê de şîr dide wî heye."*

(B6195 Buxarî, Edeb, 109)



**1259.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îşev kurekî min çêbû. Min navê bavkalê xwe Îbrahîm lê kir."* ... Piştre Enes (r.) dibêje: "Min ew kurik di nav lepê Resûlê Xwedê de dema rih dida dît. Vêca hestir ji çavên wî herikîn û got: *"Çav hestir dike, dil huznê dike û em ji bilî tişta ku Rebbê me razî bike tiştek dîtir nabêjin. Ey Îbrahîm! Bi rastî em bi mirina te xemgîn in."*

(D3126 Ebû Dawûd, Cena'iz, 23, 24)

# HZ. PÊXEMBER
## BI ZAROK Û BI XORTAN RE WEKE HEVALEKÎ
## Ji Zarokan re: Mihebbet, Şefqet û Îltîfat – Ji Xortan re: Rûmet, Ewleyî û Cesaret

**1260.** Usame bin Zeyd (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ez digirtim û didanîm ser raneke xwe û Hesen bin Elî jî didanî ser ranê xwe yê dîtir, piştre jî em didane ber singa xwe ve û digot: *"Xwedayê min! Tu merhemetê li van herduyan bike! Ez jî li wan merhemetê dikim."*

(B6003 Buxarî, Edeb, 22)



**1261.** Ebû Qetade (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê nimêj dikir û Umame keça qîza wî Zeyneb ya ji Ebu'l-'As bin er-Rebî' li ber singa wî bû. Dema dirabû şipiya dirahiştiyê û dema biçûya secdê ew didanî erdê."

(M1212 Muslim, Mesâcid ve mewdi'u's-salat, 41; B516 Buxarî, Salat, 106)



١٢٦٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَمْ يَرْحَمْ صَغِيرَنَا وَيُوَقِّرْ كَبِيرَنَا وَيَأْمُرْ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَ عَنِ الْمُنْكَرِ."



١٢٦٣- عَنْ أَنَسٍ [بْنِ مَالِكٍ] قَالَ: خَدَمْتُ رَسُولَ اللَّهِ عَشْرَ سِنِينَ، وَاللَّهِ! مَا قَالَ لِي: أُفًّا قَطُّ، وَلاَ قَالَ لِي لِشَيْءٍ: لِمَ فَعَلْتَ كَذَا؟ وَهَلاَّ فَعَلْتَ كَذَا؟



١٢٦٤- عَنْ مَالِكِ بْنِ الْحُوَيْرِثِ قَالَ: قَدِمْنَا عَلَى النَّبِيِّ ﷺ وَنَحْنُ شَبَبَةٌ، فَلَبِثْنَا عِنْدَهُ نَحْوًا مِنْ عِشْرِينَ لَيْلَةً، وَكَانَ النَّبِيُّ ﷺ رَحِيمًا فَقَالَ: "لَوْ رَجَعْتُمْ إِلَى بِلاَدِكُمْ فَعَلَّمْتُمُوهُمْ..."

# HZ. PÊXEMBER
## KESÊN NÊZÎKÊN WÎ, XIZMETKARÊN WÎ; XIZMETKARÊN WE BIRAYÊN WE NE

١٢٦٥- عَنْ أَنَسٍ [بْنِ مَالِكٍ] قَالَ: خَدَمْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ عَشْرَ سِنِينَ وَاللَّهِ مَا قَالَ لِي: أُفًّا قَطُّ وَلاَ قَالَ لِي لِشَيْءٍ: لِمَ فَعَلْتَ كَذَا؟ وَهَلاَّ فَعَلْتَ كَذَا!



١٢٦٦- مُحَمَّدُ بْنُ زِيَادٍ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِذَا أَتَى أَحَدَكُمْ خَادِمُهُ بِطَعَامِهِ، فَإِنْ لَمْ يُجْلِسْهُ مَعَهُ، فَلْيُنَاوِلْهُ لُقْمَةً أَوْ لُقْمَتَيْنِ أَوْ أُكْلَةً أَوْ أُكْلَتَيْنِ، فَإِنَّهُ وَلِيَ عِلاَجَهُ."



**1262.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê rehmê li piçûkê me neke û hurmeta mezinê me negire, emrê bi qenciyê û men'a ji xirabiyê neke ew ne ji me ye."*

(T1921 Tirmizî, Birr we sile, 15)



**1263.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min deh salan xizmeta Resûlê Xwedê (s.) kir. Wellahî careke jî be ji min re negot: 'Of'. Ji bo tu tiştî ne gotiye min: '*Çima te wilo kir?*' anjî '*Te halo kiribaya!*'"

(M6011 Muslim, Feda'il, 51)



**1264.** Malik bin Huweyris (r.) dibêje: "Em çend xortên (hevsal) hatine cem Pêxemberê Xwedê (s.) û em nêzî bîst şevan li cemê man. Pêxemberê Xwedê (s.) bi merhamet û pir bişefqet bû... (Dema fêhm kir me bîriya ehlê xwe kiriye) got: *"Êdî hûn vegerihabana welatê xwe û (tiştê li vir hîn bûyîn) we bi wan bida hînkirin ..."*

(B685 Buxarî, Ezan, 49)

# HZ. PÊXEMBER
## KESÊN NÊZÎKÊN WÎ, XIZMETKARÊN WÎ; XIZMETKARÊN WE BIRAYÊN WE NE

**1265.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min deh salan xizmeta Resûlê Xwedê (s.) kir. Wellahî careke jî be ji min re negot: 'Of'. Ji bo tu tiştekî ne gotiye min: '*Çima te wilo kir?*' an jî '*Te halo kiribaya!*'"

(M6011 Muslim, Feda'il, 51)



**1266.** Muhemmed bin Ziyad dibêje: "Min ji Ebû Hureyre (r.) bihîst digot: "Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema xizmetkarê yekî ji hewe jê re xwarina wî anî, heke wî bi xwe re nerûnêne, bila pariyek an du pariya bixe destê wî de. Lewra ewî xwarin pehtiye û amade kiriye."*

(B2557 Buxarî, 'Itq, 18)



١٢٦٧- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا ضَرَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ شَيْئًا قَطُّ بِيَدِهِ، وَلاَ امْرَأَةً، وَلاَ خَادِمًا، إِلاَّ أَنْ يُجَاهِدَ فِى سَبِيلِ اللَّهِ...



١٢٦٨- عَنِ الْمَعْرُورِ قَالَ: لَقِيتُ أَبَا ذَرٍّ بِالرَّبَذَةِ وَعَلَيْهِ حُلَّةٌ وَعَلَى غُلاَمِهِ حُلَّةٌ فَسَأَلْتُهُ عَنْ ذَلِكَ. فَقَالَ: إِنِّى سَابَبْتُ رَجُلاً فَعَيَّرْتُهُ بِأُمِّهِ، فَقَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ : "يَا أَبَا ذَرٍّ! أَعَيَّرْتَهُ بِأُمِّهِ؟ إِنَّكَ امْرُؤٌ فِيكَ جَاهِلِيَّةٌ، إِخْوَانُكُمْ خَوَلُكُمْ جَعَلَهُمُ اللَّهُ تَحْتَ أَيْدِيكُمْ، فَمَنْ كَانَ أَخُوهُ تَحْتَ يَدِهِ فَلْيُطْعِمْهُ مِمَّا يَأْكُلُ، وَلْيُلْبِسْهُ مِمَّا يَلْبَسُ، وَلاَ تُكَلِّفُوهُمْ مَا يَغْلِبُهُمْ، فَإِنْ كَلَّفْتُمُوهُمْ فَأَعِينُوهُمْ."

# HZ. PÊXEMBER Û SEHABIYÊN WÎ
## HEVALTIYEK JI CAN Û DIL

١٢٦٩- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ كَلاَمُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كَلاَمًا فَصْلاً يَفْهَمُهُ كُلُّ مَنْ سَمِعَهُ.



١٢٧٠- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعِيدُ الْكَلِمَةَ ثَلاَثًا لِتُعْقَلَ عَنْهُ.



**1267.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ji bilî cîhadkirina di rêya Xwedê de, Resûlê Xwedê (s.) bi destê xwe li tu tiştî; li tu kesî nedaye. Ne li pîreka ne jî li xizmetçiya..."

(M6050 Muslim, Feda'il, 79)



**1268.** Me'rûr (r.) dibêje: "Ez li Rebzeyê liqayî Ebû Zer (r.) hatim. Li ser wî bedlek hebû û li ser koleyê wî bedlek hebû (qiyafeta herduka eynî bû). Min sebebê vê ji Ebû Zer pirsî. Ewî got: "Min û zilamekî xeber kirin hevûdû. Vêca min ew bi diya wî (ya ku zencî bû) sernivz kir. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *"Ya Ebû Zer! Ma tu wî bi dayîka wî sernivz dikî? Nexwe tu hê jî yek ji wan zilaman î ku tê de eserê cahiliyetê heye. Birayên we yên kole, xizmetkarên we ne ku Xwedê ew kirin emrê we. Kesê ku di bin emrê wî de birayekî wî (yê kole) hebe, tişta dixwe bila bi wî jî bide xwarin û tişta li xwe dike bila li wî jî bike. Karên ji taqeta wan der bi wan nedin kirin. Heke we da kirin alîkariya wan bikin."*

(B30 Buxarî, Îman, 22)

# HZ. PÊXEMBER Û SEHABIYÊN WÎ
## HEVALTIYEK JI CAN Û DIL

**1269.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Xeberdana Resûlê Xwedê (s.) wisa zelal û diyar bû, çi kesê bihîstiba fêhm dikir."

(D4839 Ebû Dawûd, Edeb, 18)



**1270.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Ji bo ku (bi rihetî) were fehmê şitexaliya xwe (carna) sê caran dubare dikir."

(T3640 Tirmizî, Menaqib, 9)



١٢٧١- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ يَتَخَوَّلُنَا بِالْمَوْعِظَةِ فِى الأَيَّامِ، كَرَاهَةَ السَّآمَةِ عَلَيْنَا.



١٢٧٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "...أُعْطِيتُ جَوَامِعَ الْكَلِمِ..."



١٢٧٣- عَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ الْحَكَمِ السُّلَمِيِّ قَالَ:... مَا رَأَيْتُ مُعَلِّمًا قَبْلَهُ وَلاَ بَعْدَهُ أَحْسَنَ تَعْلِيمًا مِنْهُ فَوَاللَّهِ مَا كَهَرَنِى وَلاَ ضَرَبَنِى وَلاَ شَتَمَنِى قَالَ "إِنَّ هَذِهِ الصَّلاَةَ لاَ يَصْلُحُ فِيهَا شَيْءٌ مِنْ كَلاَمِ النَّاسِ إِنَّمَا هُوَ التَّسْبِيحُ وَالتَّكْبِيرُ وَقِرَاءَةُ الْقُرْآنِ."

# SEHABE Û RESÛLÊ XWEDÊ
## SEDAQET Û ÎTAET

١٢٧٤- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ شَرِيكٍ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَأَصْحَابُهُ كَأَنَّمَا عَلَى رُءُوسِهِمُ الطَّيْرُ...



١٢٧٥- حَدَّثَنَا أَنَسٌ رضي الله عنه قَالَ: خَدَمْتُ النَّبِيَّ ﷺ عَشْرَ سِنِينَ، فَمَا قَالَ لِى: أُفٍّ. وَلاَ لِمَ صَنَعْتَ؟ وَلاَ أَلاَّ صَنَعْتَ.



**1271.** Ibn Mesûd (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji bo ku me aciz neke nesîhet û we'zên xwe di hinek rojên diyarkirî de dikirin."

(B68 Buxarî, İlim, 11; M7127 Muslim, Sıfatu'l-munafıqîn we Ehkamuhum, 82)



**1272.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"...Gotinên têrme'ne bexşê min bûne..."*

(M1167 Muslim, Mesâcid, 5: B2977 Buxarî, Cîhad, 122)



**1273.** Muawiye bin el-Hekem es-Sulemî, (dema di nimêjê de şitexilîbû û sehabiyan xwe pê re aciz kiribûn) buyer wiha îfade kiriye: "... Min ne berî wî û ne jî piştî wî keseke ji wî baştir bide hînkirin nedît. Wellahî Resûlê Xwedê (s.) ne itab li min kir, ne li min xist ne jî heqaret li min kir. Tenê wiha got: *"Di van nimêjan de xeberdana mirovan çênabe. Nimêj tenê tesbîh, tekbîr û xwendina Qur'anê ye."*

(M1199 Muslim, Mesacid, 33)

# SEHABE Û RESÛLÊ XWEDÊ
## SEDAQET Û ÎTAET

**1274.** Usame bin Şerîk (r.) gotiye: "Ez çûme cem Pêxember (s.) sehabiyên wî (dema ku bi hurmet û edeb guhdarî wî dikirin) te digot qey li ser serê wan teyr heye..."

(D3855 Ebû Dawûd, Tib, 1)



**1275.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Min deh sala xizmeta Resûlê Xwedê (s.) kir. Careke jî be ji min re negot: 'Of', ç*ima te wilo kir,* an jî *te halo kiribaya!*"

(B6038 Buxarî, Edeb, 39; B2768 Buxarî, Wesaya, 25)



١٢٧٦- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: لَمْ يَكُنْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ سَبَّابًا وَلَا لَعَّانًا وَلَا فَحَّاشًا...



١٢٧٧- عَنْ جَرِيرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: مَا حَجَبَنِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ مُنْذُ أَسْلَمْتُ وَلاَ رَآنِى إِلاَّ ضَحِكَ.



١٢٧٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: مَا رَأَيْتُ أَحَدًا أَكْثَرَ مَشُورَةً لِأَصْحَابِهِ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ .

# HEZJÊKIRINA SEHABIYAN JI PÊXEMBER
## ŞANÊN HEZJÊKIRINÊ

١٢٧٩- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى أَكُونَ أَحَبَّ إِلَيْهِ مِنْ وَالِدِهِ وَوَلَدِهِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ."



١٢٨٠- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: لَمْ يَكُنْ شَخْصٌ أَحَبَّ إِلَيْهِمْ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ [قَالَ]: وَكَانُوا إِذَا رَأَوْهُ لَمْ يَقُومُوا لِمَا يَعْلَمُونَ مِنْ كَرَاهِيَتِهِ لِذَلِكَ.



**1276.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ne dujûnker bû, ne le'net tanî, ne jî xeberê pîs dikirin..."

(HM12299 Ibn Hanbel, III, 127)



**1277.** Cerîr bin Ebdîllah (r.) gotiye: "Ji dema misilman bûm pê ve Resûlê Xwedê (s.) tu caran ez ji ber derî nevegerandime. Çi cara ez dîtim mitleqa beşişiye."

(T3820 Tirmizî, Menaqib, 41)



**1278.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Min kesek ji Resûlê Xwedê (s.) zêdetir bi eshabê xwe re dişêwire neditiye."

(T1714 Tirmizî, Cîhad, 35; HM19136 Ibn Hanbel, IV, 329)

# HEZJÊKIRINA SEHABIYAN JI PÊXEMBER
## ŞANÊN HEZJÊKIRINÊ

**1279.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta yek ji hewe ji bavê xwe, ji ewladê xwe û ji tev însanan zehftir hez ji min neke ewî (tam) îman neaniye."*

(B15 Buxarî, Îman, 8)



**1280.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "Sehabiyan ji Resûlê Xwedê zehftir hez ji tu kesî nedikirin. Belê ji ber ku dizanîn li xweşa wî naçe dema didîtin ji ber ve nedirabûne şipiya."

(T2754 Tirmizî, Edeb, 13)



١٢٨١- عَنْ أَبِي قُرَادٍ السَّلَمِيِّ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَدَعَا بِطَهُورٍ، فَغَمَسَ يَدَهُ فِيهِ، ثُمَّ تَوَضَّأَ، فَتَتَبَّعْنَاهُ، فَحَسَوْنَاهُ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مَا حَمَلَكُمْ عَلَى مَا صَنَعْتُمْ؟" قُلْنَا، حُبُّ اللَّهِ وَرَسُولِهِ قَالَ: "فَإِنْ أَحْبَبْتُمْ أَنْ يُحِبَّكُمُ اللَّهُ وَرَسُولُهُ فَأَدُّوا إِذَا ائْتُمِنْتُمْ، وَاصْدُقُوا إِذَا حَدَّثْتُمْ، وَأَحْسِنُوا جِوَارَ مَنْ جَاوَرَكُمْ."



١٢٨٢- عَنْ عَوْنِ بْنِ أَبِى جُحَيْفَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ وَهُوَ فِى قُبَّةٍ حَمْرَاءَ مِنْ أَدَمٍ، وَرَأَيْتُ بِلاَلاً أَخَذَ وَضُوءَ النَّبِيِّ ﷺ وَالنَّاسُ يَبْتَدِرُونَ الْوَضُوءَ، فَمَنْ أَصَابَ مِنْهُ شَيْئًا تَمَسَّحَ بِهِ، وَمَنْ لَمْ يُصِبْ مِنْهُ شَيْئًا أَخَذَ مِنْ بَلَلِ يَدِ صَاحِبِهِ.

# HZ. PÊXEMBER
## HEVALTIYA WÎ; SEDAQET, SEMÎMIYET Û WEFA

١٢٨٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَوْ كُنْتُ مُتَّخِذًا خَلِيلًا لَاتَّخَذْتُ أَبَا بَكْرٍ، وَلَكِنْ أَخِي وَصَاحِبِي."



**1281.** Ebû Qurad es-Sulemî (r.) gotiye: "Em li cem Resûlê Xwedê (s.) bûn. (Ji bo destnimêj bigire) ava paqij xwest û destê xwe kire avê de. Piştre jî destnimêj girt. Me kir ku ava destnimêja wî bidest bêxin. Me (ji ava destnimêja wî) vexwar. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) pirsî: *"Ma bo çi we wisa kir?"* Me got: "Bo hezjêkirina Xwedê û Resûlê Wî." Vêca Pêxember (s.) got: *"Heke we bivê Xwedê û Resûlê Wî jî hez ji hewe bikin, dema tiştek emanetê we bû muhafeze bikin, dema hûn axivîn rast biaxivin û bi cîranên xwe re baş cîrantiyê bikin."*

(ME6517 Taberanî, el-Mu'cemu'l-ewsat, VI, 320)



**1282.** Ji 'Ewn bin Ebî Cuheyfe hatiye ragihandin ku bavê wî gotiye: "Ez çûme cem Resûlê Xwedê (s.) di koneke sorê çerm de bû. Min Bîlal dît di destê wî de ava ji ber destnimêja Resûlê Xwedê mayî hebû û mirovan ji bo ku wê avê bi dest bêxin bi hev re pêşbazî dikirin. Kesê karî hinekî jê bi dest bixe li ser û çavên xwe dida û kesê tiştek negihayê ji şilatiya destê hevalê xwe tiştek distand."

(B5859 Buxarî, Libas, 42)

# HZ. PÊXEMBER
## HEVALTIYA WÎ; SEDAQET, SEMÎMIYET Û WEFA

**1283.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke min kesek ji xwe re kiriba dost min ê Ebû Bekir kiriba dost. Belê ew birayê min e û hevalê min e."*

(B3656 Buxarî, Feda'ilu eshabi'n-nebî, 5)



١٢٨٤- عَنْ عَبْدِ اللّٰهِ بْنِ مَسْعُودٍ؛ أَنَّ رَسُولَ اللّٰهِ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ نَبِيٍّ بَعَثَهُ اللّٰهُ فِى أُمَّةٍ قَبْلِى، إِلاَّ كَانَ لَهُ مِنْ أُمَّتِهِ حَوارِيُّونَ وَأَصْحَابٌ يَأْخُذُونَ بِسُنَّتِهِ وَيَقْتَدُونَ بِأَمْرِهِ..."



١٢٨٥- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "لاَ تَسُبُّوا أَصْحَابِى، فَوَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ! لَوْ أَنْفَقَ أَحَدُكُمْ مِثْلَ أُحُدٍ ذَهَبًا مَا بَلَغَ مُدَّ أَحَدِهِمْ وَلاَ نَصِيفَهُ."



١٢٨٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الرَّجُلُ عَلَى دِينِ خَلِيلِهِ فَلْيَنْظُرْ أَحَدُكُمْ مَنْ يُخَالِلُ."

# HZ. PÊXEMBER
## MIRIYÊ UMMETA XWE; UMMETA MIN ! UMMETA MIN!

١٢٨٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللّٰهِ ﷺ : "إِنَّمَا مَثَلِى وَمَثَلُ أُمَّتِى كَمَثَلِ رَجُلٍ اسْتَوْقَدَ نَارًا، فَجَعَلَتِ الدَّوَابُّ وَالْفَرَاشُ يَقَعْنَ فِيهِ، فَأَنَا آخِذٌ بِحُجَزِكُمْ وَأَنْتُمْ تَقَحَّمُونَ فِيهِ."



**1284.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav ummeta her pêxemberî de ku Xwedê beriya min ji milletekî re şiyandin, hewariyên wan û hevalên wan yên di rêya wan de diçin û emrê wan pêk tînin hene..."*

(M179 Muslim, Îman, 80)



**1285.** Ji Ebû Seîd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dujûna li sehabiyê min nekin. Ez sond dixwim bi wî (Xweda) yê ku rihê min di destê wî de ye! Heke yekî ji hewe biqasî (çiyayê) Uhudê zêr înfaq bike, nagihe elbek an nîv elb sedeqeya wan kirî."*

(D4658 Ebû Dawûd, Sunnet, 10)



**1286.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mirov li ser dînê hevalê xwe ne. Bo vê yekê bila her yek ji hewe meyze bike ka bi kî re dostaniyê dike."*

(D4833 Ebû Dawûd, Edeb, 16; T2378 Tirmizî, Zuhd, 45)

# HZ. PÊXEMBER
## MIRIYÊ UMMETA XWE; UMMETA MIN ! UMMETA MIN!

**1287.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela ummeta min weke mesela zilamekî ku (bi şev) agirek pêxistiye, vêca perperok û kêzik tên xwe tavêjine êgir. Ez jî dema hûn xwe tevêjin êgir de bi piştika we digirim, nahêlim hûn xwe bavêjinê de."*

(M5955 Muslim, Feda'il, 17)



١٢٨٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ مُؤْمِنٍ إِلاَّ وَأَنَا أَوْلَى النَّاسِ بِهِ فِى الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، اقْرَءُوا إِنْ شِئْتُمْ: ﴿النَّبِيُّ أَوْلَى بِالْمُؤْمِنِينَ مِنْ أَنْفُسِهِمْ﴾ فَأَيُّمَا مُؤْمِنٍ تَرَكَ مَالاً فَلْيَرِثْهُ عَصَبَتُهُ مَنْ كَانُوا، فَإِنْ تَرَكَ دَيْنًا أَوْ ضِيَاعًا فَلْيَأْتِنِى، وَأَنَا مَوْلاَهُ."

١٢٨٩- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِى قَتَادَةَ، عَنْ أَبِيهِ أَبِى قَتَادَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنِّى لَأَقُومُ فِى الصَّلاَةِ أُرِيدُ أَنْ أُطَوِّلَ فِيهَا، فَأَسْمَعُ بُكَاءَ الصَّبِيِّ فَأَتَجَوَّزُ فِى صَلاَتِى، كَرَاهِيَةَ أَنْ أَشُقَّ عَلَى أُمِّهِ."

١٢٩٠- حَدَّثَنَا أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ، أَنَّ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لِكُلِّ نَبِيٍّ دَعْوَةٌ دَعَاهَا لِأُمَّتِهِ. وَإِنِّى اخْتَبَأْتُ دَعْوَتِى شَفَاعَةً لِأُمَّتِى يَوْمَ الْقِيَامَةِ."

## UMMETA ÎSLAMÊ
### HÛN XÊRTIRÎNÊ UMMETAN IN

١٢٩١- عَنْ بَهْزِ بْنِ حَكِيمٍ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِنَّكُمْ وَفَّيْتُمْ سَبْعِينَ أُمَّةً. أَنْتُمْ خَيْرُهَا، وَأَكْرَمُهَا عَلَى اللَّهِ."

**1288.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez di dinya û di axîretê de weliyê yekane yê her muminî me. We bivê vê ayetê bixwênin: 'Pêxember, nêzîktirê mumina ye ji canê wan.' Her kî muminê piştî mirinê mal hiştibe, bila eqrebayên wî yê ji teref bavê ve bibine wêrisên wî. Heke piştî xwe deyn an jî zaro û zêç ên muhtacê xwedîkirinê hiştibin bila were cem min. Lewra weliyê wî ez im."*

(B4781 Buxarî, Tefsîr, (Ehzab) 1)



**1289.** Ji Ebdullah bin Ebî Qetade (r.) hatiye ragihandin ku bavê wî ji Resûlê Xwedê (s.) rîwayet kiriye digot: *"Carina ez dirabime nimêjê û niyeta min ew e ku dirêj bikim, belê dengê giriyê zarokekî tê min, vêca bo ku tengiyê negihînim dayîka wî ez nimêja xwe kin dikim."*

(B707 Buxarî, Ezan, 65)



**1290.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pêxemberekî ji ummeta xwe re duayek kirî heye. Belê min dua xwe bo şefaetkirinê hiştiye Roja Qiyametê."*

(M494 Muslim, Îman, 341)

# UMMETA ÎSLAMÊ
## HÛN XÊRTIRÎNÊ UMMETAN IN

**1291.** Behz bin Hekîm bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Hewe hijmara ummeta kiriye heftê. Li cem Xwedê hûn xêrtirînê van ummetan in û ummeta bi qîmettir jî hûn in."*

(İM4288 Ibn Maceh, Zuhd, 34)



١٢٩٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "نَحْنُ الآخِرُونَ وَنَحْنُ السَّابِقُونَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٢٩٣- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "كُلُّ أُمَّتِي يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ، إِلاَّ مَنْ أَبَى"، قَالُوا: يَا رَسُولَ اللَّهِ، وَمَنْ يَأْبَى؟ قَالَ: "مَنْ أَطَاعَنِي دَخَلَ الْجَنَّةَ، وَمَنْ عَصَانِي فَقَدْ أَبَى."



١٢٩٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَثَلُ أُمَّتِي مَثَلُ الْمَطَرِ لاَ يُدْرَى أَوَّلُهُ خَيْرٌ أَمْ آخِرُهُ."



١٢٩٥- عَنْ أَبِي مَالِكٍ يَعْنِي الأَشْعَرِيَّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ أَجَارَكُمْ مِنْ ثَلاَثِ خِلاَلٍ: أَنْ لاَ يَدْعُوَ عَلَيْكُمْ نَبِيُّكُمْ فَتَهْلِكُوا جَمِيعًا، وَأَنْ لاَ يَظْهَرَ أَهْلُ الْبَاطِلِ عَلَى أَهْلِ الْحَقِّ، وَأَنْ لاَ تَجْتَمِعُوا عَلَى ضَلاَلَةٍ."

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ ILM Û TECRUBEYÊ

١٢٩٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا بَارِزًا لِلنَّاسِ فَأَتَاهُ رَجُلٌ ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "هَذَا جِبْرِيلُ جَاءَ لِيُعَلِّمَ النَّاسَ دِينَهُمْ."



**1292.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Em ummeta dawî ne û Roja Qiyametê em ê yê pêşî bin."*

(M1979 Muslim, Cum'a, 19)



**1293.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bilî kesê ku nexwaze ummeta min tev wê biçin cennetê."* Gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma kî naxwaze?" Resûle Xwedê bersiv da: *"Kesê bi ya min bike wê biçe cennetê û kesê bêemriya min bike ewî nexwestiye."*

(B7280 Buxarî, I'tîsam, 2)



**1294.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela ummeta min weke mesela baranê ye. Nayê zanîn ka gelo serê wê xêrtir e an jî dawiya wê."*

(T2869 Tirmizî, Emsal, 81)



**1295.** Ji Ebû Malik el-Eşerî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê hûn ji van sê tiştan parastine: Pêxemberê we bêduayiya li we neke ku hûn tev helak bibin, serkeftina ehlê batilî pêşber ehlê heq de û ittîfaqa di batilî de."*

(D4253 Ebû Dawûd, Fîten ve melahim, 1)

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ ILM Û TECRUBEYÊ

**1296.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku rojekî Resûlê Xwedê (s.) di nav millet de rûniştîbû. Vêca zilamek hate cemê... Resûlê Xwedê got: *"Ew (zilam) Cibrîl bû hat deqene dînê mirovan bi wan bide hînkirin."*

(M97 Muslim, Îman, 5)



١٢٩٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ رَافِعٍ قَالَ: سَمِعْتُ أُمَّ سَلَمَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ بِهَذَا الْحَدِيثِ قَالَ: يَخْتَصِمَانِ فِى مَوَارِيثَ وَأَشْيَاءَ قَدْ دَرَسَتْ فَقَالَ: "إِنِّى إِنَّمَا أَقْضِى بَيْنَكُمْ بِرَأْيِى فِيمَا لَمْ يُنْزَلْ عَلَىَّ فِيهِ."



١٢٩٨- عَنْ أُمِّ سَلَمَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ، وَإِنَّكُمْ تَخْتَصِمُونَ إِلَىَّ فَلَعَلَّ بَعْضَكُمْ أَنْ يَكُونَ أَلْحَنَ بِحُجَّتِهِ مِنْ بَعْضٍ فَأَقْضِىَ لَهُ عَلَى نَحْوِ مَا أَسْمَعُ مِنْهُ فَمَنْ قَضَيْتُ لَهُ بِشَىْءٍ مِنْ حَقِّ أَخِيهِ فَلاَ يَأْخُذَنَّ مِنْهُ شَيْئًا فَإِنَّمَا أَقْطَعُ لَهُ قِطْعَةً مِنَ النَّارِ."

## HZ. PÊXEMBER
## QUR'ANA ZÎNDE

١٢٩٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنَ الْأَنْبِيَاءِ نَبِيٌّ إِلاَّ أُعْطِىَ مِنَ الْآيَاتِ مَا مِثْلُهُ أُومِنَ -أَوْ آمَنَ- عَلَيْهِ الْبَشَرُ، وَإِنَّمَا كَانَ الَّذِى أُوتِيتُ وَحْيًا أَوْحَاهُ اللَّهُ إِلَىَّ، فَأَرْجُو أَنِّى أَكْثَرُهُمْ تَابِعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٣٠٠- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ أَبُو بَكْرٍ ﵁: يَا رَسُولَ اللَّهِ قَدْ شِبْتَ. قَال: "شَيَّبَتْنِى هُودٌ وَالْوَاقِعَةُ وَالْمُرْسَلاَتُ وَ ﴿عَمَّ يَتَسَاءَلُونَ﴾ وَ ﴿إِذَا الشَّمْسُ كُوِّرَتْ﴾.



**1297.** Ebdullah bin Rafi' (r.) ji Ummu Seleme (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) ji du kesên di derheqê mîras û malên windabûyî de li hev nekirin û hatin cem wî gotiye: *"Di derheqê meseleyên ku derbareyê wan de wehiy tuneyî de ez bi re'ya xwe hukum didim."*

(D3585 Ebû Dawûd, Qedâ' (Eqdiye), 7)



**1298.** Ji Ummu Seleme (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman ez beşer im. Hûn de'weyên xwe tênine ji min re. Vêca dibe hinek ji we ji hinekan hostatir bin di îfadekirina delîla xwe de û ez jî li gora bihîstina xwe hukum didim. Heke ez heqê birayê yekî ji we bidime kî ji we, bila negire. Lewra (bi vî hukmî) min qetek agir dayiyê."*

(MU1402 Muwatta', Eqdiye, 1; B7169 Buxarî, Ehkam, 20)

# HZ. PÊXEMBER
## QUR'ANA ZÎNDE

**1299.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Tu pêxember nînin ku ji bo mirov baweriyê pê bînin (Xwedê) mucize nedabinê. Mucîza ku (Xwedê) daye min wehy e. Vêca ez hêvî dikim ku Roja Qiyametê di nav pêxemberan de yê ummeta wî zêdetir ez bim."*

(B7274 Buxarî, I'tîsam, 1; M385 Muslim, Îman, 239)



**1300.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Ebû Bekir (r.) gotiye: "Ya Resûlê Xwedê! Pora te sipî bûye!" Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Sûretê Hûd, Waqî'a, Murselat, Nebe' û Tekwîr ez ixtiyar kirime."*

(T3297 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 56)



١٣٠١- قَالَ عُمَرُ أَمَا إِنَّ نَبِيَّكُمْ ﷺ قَدْ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ يَرْفَعُ بِهَذَا الْكِتَابِ أَقْوَامًا وَيَضَعُ بِهِ آخَرِينَ."



١٣٠٢- عَنْ سَعْدِ بْنِ هِشَامٍ ...قَالَ قُلْتُ: يَا أُمَّ الْمُؤْمِنِينَ حَدِّثِينِى عَنْ خُلُقِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ . قَالَتْ: أَلَسْتَ تَقْرَأُ الْقُرْآنَ فَإِنَّ خُلُقَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كَانَ الْقُرْآنَ...

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ DILNAZIK Û XEMGÎR

١٣٠٣- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "وُلِدَ لِيَ اللَّيْلَةَ غُلاَمٌ فَسَمَّيْتُهُ بِاسْمِ أَبِى إِبْرَاهِيمَ -عَلَيْهِ السَّلاَمَ-" ... فَقَالَ أَنَسٌ: لَقَدْ رَأَيْتُهُ وَهُوَ يَكِيدُ بِنَفْسِهِ بَيْنَ يَدَىْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَدَمَعَتْ عَيْنَا رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "تَدْمَعُ الْعَيْنُ وَيَحْزَنُ الْقَلْبُ وَلاَ نَقُولُ إِلاَّ مَا يَرْضَى رَبُّنَا وَاللَّهِ! يَا إِبْرَاهِيمُ! إِنَّا بِكَ لَمَحْزُونُونَ."



١٣٠٤- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: كَانَ النَّبِيُّ ﷺ أَشَدَّ حَيَاءً مِنَ الْعَذْرَاءِ فِى خِدْرِهَا، فَإِذَا رَأَى شَيْئًا يَكْرَهُهُ عَرَفْنَاهُ فِى وَجْهِهِ.



١٣٠٥- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا أَنَّهَا قَالَتْ: ...مَا انْتَقَمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِنَفْسِهِ، إِلاَّ أَنْ تُنْتَهَكَ حُرْمَةُ اللَّهِ فَيَنْتَقِمَ لِلَّهِ بِهَا.



**1301.** Hz. Umer (r.) gotiye: "Zanibin, Pêxemberê we (s.) (di derheqê Qur'anê de) gotiye: *'Bêguman Xwedê bi vê Kitêbê milletina bilind dike û milletina nivz dike.'*"

(M1897 Muslim, Salatu'l-musâfirîn we qesruha, 269)



**1302.** Se'd bin Hîşam (r.) dibêje: "Min (ji Hz. Aîşe re) got: "Ey dayîka Mumina! Ka ji min re behsa exlaqê Pêxember bike." Ewê got: "Ma tu Qur'anê naxwînî? Exlaqê Resûlê Xwedê (s.) Qur'an bû..."

(D1342 Ebû Dawûd, Tatawwu', 26)

# HZ. PÊXEMBER
## ÎNSANÊ DILNAZIK Û XEMGÎR

**1303.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Îşev kurekê min çêbû. Min navê bavkalê xwe Îbrahîm lê kir."* ... Piştre Enes (r.) dibêje: "Min ew kurik di nav lepê Resûlê Xwedê de dema rih dida dît. Vêca hestir ji çavên wî herikîn û got: *"Çav hestir dike, dil huznê dike û em ji bilî tişta ku Rebbê me razî bike tiştek dîtir nabêjin. Ey Îbrahîm! Bi rastî em bi mirina te xemgîn in."*

(M6025 Muslim, Feda'il, 62)



**1304.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji qîzika nuxumandî bi heyatir bû. Dema tişteka ne bi keyfa xwe dîtiba me ji rûyê wî fêhm dikir."

(B6102 Buxarî, Edeb, 72)



**1305.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê ji bo tu neheqiya lê hatî kirin ji bo şexsê xwe heyf nehilaniye (kesek ceza nekiriye). Belê ji bo pêlêkirina heramên Xwedê ji bo Xwedê ceza kiriye."

(B3560 Buxarî, Menaqib, 23)



١٣٠٦- أَنَّ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ كَعْبٍ قَالَ: سَمِعْتُ كَعْبَ بْنَ مَالِكٍ يُحَدِّثُ حِينَ تَخَلَّفَ عَنْ تبُوكَ قَالَ... وَكَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا سُرَّ اسْتَنَارَ وَجْهُهُ، حَتَّى كَأَنَّهُ قِطْعَةُ قَمَرٍ، وَكُنَّا نَعْرِفُ ذَلِكَ مِنْهُ.



١٣٠٧- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَتْ: مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ضَاحِكًا حَتَّى أَرَى مِنْهُ لَهَوَاتِهِ، إِنَّمَا كَانَ يَتَبَسَّمُ.

# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ KU DUAYÊN WÎ JI TEV UMMETA WÎ RE YE

١٣٠٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَسْتَحِبُّ الْجَوَامِعَ مِنَ الدُّعَاءِ وَيَدَعُ مَا سِوَى ذَلِكَ.



١٣٠٩- عَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا ذَكَرَ أَحَدًا فَدَعَا لَهُ بَدَأَ بِنَفْسِهِ.



١٣١٠- عَنِ ابْنِ أَبِي مُوسَى عَنْ أَبِيهِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ كَانَ يَدْعُو بِهَذَا الدُّعَاءِ: "رَبِّ اغْفِرْ لِي خَطِيئَتِي وَجَهْلِي وَإِسْرَافِي فِي أَمْرِي كُلِّهِ، وَمَا أَنْتَ أَعْلَمُ بِهِ مِنِّي. اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي خَطَايَايَ وَعَمْدِي وَجَهْلِي وَجِدِّي، وَكُلُّ ذَلِكَ عِنْدِي. اللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي مَا قَدَّمْتُ وَمَا أَخَّرْتُ وَمَا أَسْرَرْتُ وَمَا أَعْلَنْتُ، أَنْتَ الْمُقَدِّمُ، وَأَنْتَ الْمُؤَخِّرُ، وَأَنْتَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ."



**1306.** Ebdullah bin Ke'b ji bavê xwe Ke'b bin Malik bihîstiye ku dema behsa şûndemayîna xwe ji Herba Tebûkê dikir got: "...Dema keyfa Resûlê Xwedê (ji tiştekî re) dihat, rûyê wî diberiqand, heta dibû weke parçeyek ji heyvê. Vêca me keyfxweşiya wî ji rûyê wî fêhm dikir."

(B3556 Buxarî, Menaqib, 23)



**1307.** Xanima Resûlê Xwedê Aîşe (r.) gotiye: "Min nedîtiye ku Resûlê Xwedê (s.) kenî heta zimanê wi yê piçûk xuya kirî. Ew tenê dibeşişî."

(B4828 Buxarî, Tefsîr, (Ehqaf) 2; M2086 Muslim, Salatu'l-îstîsqa', 16)

# HZ. PÊXEMBER
## PÊXEMBERÊ KU DUAYÊN WÎ JI TEV UMMETA WÎ RE YE

**1308.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) hez ji duayên umûmî dikir û terka duayên dîtir (yên munferit; tenê ji xwe re) dikir."

(D1482 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabi'l-witr, 23)



**1309.** Ji Ubey bin Ke'b hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) behsa yekî kiriba, vêca jê re dua kiriba, pêşî bi xwe dest pê dikir."

(T3385 Tirmizî, De'ewat, 10)



**1310.** Ji Ibn Ebî Mûsa hatiye ragihandin ku bavê wî gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ev dua dikir: *"Rebbê min! Gunehên min, nezaniya min, zêdegaviyên min yên di her kar û barên min de û halên min yên tu ji min bi wan zehftir dizanî bibexşîne. Xwedayê min! Gunehên min yên bi zanebûn û bi nezanîn, yên bi henekî an jî bi ciddî, yên ku min kirin bibexşîne. Ji xwe ev hemî li ba min hene. Xwedayê min! Gunehên min yên buhûrî, yên werin, yên min bi dizî kirin û yên eşkere hemiyan bibexşîne. Yê pêş de têne û yê paş de dibe her tu yî. Tu yê ku qeweta wî bi her tiştî tê yî."*

(B6398 Buxarî, De'ewat, 60)



١٣١١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يُعْجِبُهُ أَنْ يَدْعُوَ ثَلاَثًا وَيَسْتَغْفِرَ ثَلاَثًا.



١٣١٢- عَنْ أَبِى أُمَامَةَ قَالَ دَعَا رَسُولُ اللَّهِ ﷺ بِدُعَاءٍ كَثِيرٍ لَمْ نَحْفَظْ مِنْهُ شَيْئًا قُلْنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ! دَعَوْتَ بِدُعَاءٍ كَثِيرٍ لَمْ نَحْفَظْ مِنْهُ شَيْئًا. قَالَ: "أَلاَ أَدُلُّكُمْ عَلَى مَا يَجْمَعُ ذَلِكَ كُلَّهُ؟ تَقُولُ: اللَّهُمَّ إِنَّا نَسْأَلُكَ مِنْ خَيْرِ مَا سَأَلَكَ مِنْهُ نَبِيُّكَ مُحَمَّدٌ ﷺ وَنَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا اسْتَعَاذَ مِنْهُ نَبِيُّكَ مُحَمَّدٌ ﷺ وَأَنْتَ الْمُسْتَعَانُ وَعَلَيْكَ الْبَلاَغُ وَلاَ حَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللَّهِ."

# HZ. PÊXEMBER
## EBDEKÊ ŞUKURDAR

١٣١٣- حَدَّثَنَا مَالِكٌ قَالَ: أَتَيْنَا إِلَى النَّبِيِّ ﷺ وَنَحْنُ شَبَبَةٌ مُتَقَارِبُونَ... "وَصَلُّوا كَمَا رَأَيْتُمُونِى أُصَلِّى، فَإِذَا حَضَرَتِ الصَّلاَةُ فَلْيُؤَذِّنْ لَكُمْ أَحَدُكُمْ وَلْيَؤُمَّكُمْ أَكْبَرُكُمْ."



١٣١٤- عَنِ ابْنِ جُرَيْجٍ: أَخْبَرَنِى أَبُو الزُّبَيْرِ أَنَّهُ سَمِعَ جَابِرًا يَقُولُ: رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَرْمِى عَلَى رَاحِلَتِهِ يَوْمَ النَّحْرِ وَيَقُولُ: "لِتَأْخُذُوا مَنَاسِكَكُمْ فَإِنِّى لاَ أَدْرِى لَعَلِّى لاَ أَحُجُّ بَعْدَ حَجَّتِى هَذِهِ."



**1311.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) hatiye rîwayet kirin ku Resûlê Xwedê (s.) hez dikir ku duaya xwe û îstîxfara xwe sê caran dubare bike.

(D1524 Ebû Dawûd, Tefr'îu ebwabi'l-witr, 26)



**1312.** Ebû Umame (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) duayek gelek zêde (dirêj) kir me tiştek jê ji ber nekir. Me got: "Ya Resûlê Xwedê! Te duayek gelek zêde (dirêj) kir me tiştek jê ji ber nekir. Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma ez duayeka ku van tevan di xwe de kom dike nîşanê we bikim? Tu yê bêjî: 'Xwedayê min! Em ji te xêrtirîn tişta ku pêxemberê te Muhemmed ji te xwestî dixwazin û em xwe dispêrine te ji şertirîn xirabiya ku pêxemberê te Muhemmed (s.) xwe jê spartî te. Kesê alîkariyê dike tu yî. Di dawiyê de emê bigihine te. Bê alîkariya Xwedê bidestkirina qewet û hêzê ne mimkin e."*

(T3521 Tirmizî, De'ewat, 88)

# HZ. PÊXEMBER
## EBDEKÊ ŞUKURDAR

**1313.** Malik (bin Huweyris) (r.) dibêje: "Em çend xortê hevsal hatine cem Pêxemberê Xwedê (s.) … Ewî ji me re wiha got: *"Weke we dîtî ez nimêj dikim hûn jî wisa bikin, dema wextê nimêjê hat bila yek ji we bang bide û mezintirînê we jî îmamtiya we bike."*

(B631 Buxarî, Ezan, 18)



**1314.** Ji Ibn Cureyc hatiye ragihandin ku Ebu'z-Zubeyr ji Cabir bihîstiye digot: "Min roja Eyda Qurbanê Resûlê Xwedê (s.) dît li ser suwariya xwe şeytan recm dikir û digot: *"Şiklê kirina îbadeta heccê ji min hîn bibin. Ez nizanim, dibe ku piştî vê heccê ez carek dî hec nekim…"*

(M3137 Muslim, Hec, 310)



١٣١٥- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: لاَ أَعْلَمُ نَبِيَّ اللَّهِ ﷺ قَرَأَ الْقُرْآنَ كُلَّهُ فِى لَيْلَةٍ وَلاَ قَامَ لَيْلَةً حَتَّى الصَّبَاحِ وَلاَ صَامَ شَهْرًا قَطُّ كَامِلاً غَيْرَ رَمَضَانَ.



١٣١٦- عَنْ مُطَرِّفٍ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يُصَلِّى وَفِى صَدْرِهِ أَزِيزٌ كَأَزِيزِ الرَّحَى مِنَ الْبُكَاءِ ﷺ.



١٣١٧- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ أَخَذَ بِيَدِهِ ...فَقَالَ: "أُوصِيكَ يَا مُعَاذُ! لاَ تَدعَنَّ فِى دُبُرِ كُلِّ صَلاَةٍ تَقُولُ: اللَّهُمَّ! أَعِنِّى عَلَى ذِكْرِكَ وَشُكْرِكَ وَحُسْنِ عِبَادَتِكَ."

# HZ. PÊXEMBER
## DE'WETKEREKÎ HEKÎM

١٣١٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّمَا مَثَلِى وَمَثَلُ أُمَّتِى كَمَثَلِ رَجُلٍ اسْتَوْقَدَ نَارًا فَجَعَلَتِ الدَّوَابُّ وَالْفَرَاشُ يَقَعْنَ فِيهِ فَأَنَا آخِذٌ بِحُجَزِكُمْ وَأَنْتُمْ تَقَحَّمُونَ فِيهِ."



**1315.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ez ilimdar nebûme ku Resûlê Xwedê (s.) di şevekî de Qur'an hemî xitim kirî, an şevek heta sibihî hemî bi îbadet derbas kirî an jî ji bilî Meha Remezanê mehek bi temamî rojî girtî."

(N2350 Nesaî, Siyam, 70; M1739 Muslim, Salatu'l-musafirîn we qesruha, 139)



**1316.** Ji Muterrif hatiye ragihandin ku bavê wî gotiye: "Min Resûlê Xwedê (s.) dît nimêj dikir. Vêca ji giriya, ji singa wî xirîniyek weke xirîniya kevirê aş dihat."

(D904 Ebû Dawûd, Salat, 156, 157; N1215 Nesaî, Sehiw, 18)



**1317.** Ji Muaz bin Cebel hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) bi destê wî girt û got: *"Ez şîretê li te dikim ku tu piştî her nimêjê terka xwendina vê duayê nekî: 'Xwedayê min! Ji bo zikrê te bikim, şukrê te bikim û xweşik ji te re îbadet bikim alîkariya min bike."*

(D1522 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabi'l-witr, 26; N1304 Nesaî, Sehiw, 60)

# HZ. PÊXEMBER
## DE'WETKEREKÎ HEKÎM

**1318.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Mesela min û mesela ummeta min weke mesela zilamekî ku (bi şev) agirek pêxistiye, vêca perperok û kêzik tên xwe tavêjine êgir. Ez jî dema hûn xwe tevêjin êgir bi piştika we digirim, nahêlim hûn xwe bavêjinê.*"

(M5955 Muslim, Feda'il, 17)



١٣١٩- حَدَّثَنَا مُحَمَّدُ بْنُ الْمُنْكَدِرِ؛ سَمِعَ رَبِيعَةَ بْنَ عَبَّادٍ الدِّيلِيَّ يَقُولُ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَطُوفُ عَلَى النَّاسِ بِمِنًى فِي مَنَازِلِهِمْ قَبْلَ أَنْ يُهَاجِرَ إِلَى الْمَدِينَةِ. يَقُولُ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يَأْمُرُكُمْ أَنْ تَعْبُدُوهُ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا...



١٣٢٠- عَنْ أَبِي حَازِمٍ أَخْبَرَنِي سَهْلُ بْنُ سَعْدٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ يَوْمَ خَيْبَرَ: ... "انْفُذْ عَلَى رِسْلِكَ حَتَّى تَنْزِلَ بِسَاحَتِهِمْ ثُمَّ ادْعُهُمْ إِلَى الإِسْلاَمِ وَأَخْبِرْهُمْ بِمَا يَجِبُ عَلَيْهِمْ مِنْ حَقِّ اللَّهِ فِيهِ. فَوَاللَّهِ لأَنْ يَهْدِيَ اللَّهُ بِكَ رَجُلاً وَاحِدًا خَيْرٌ لَكَ مِنْ أَنْ يَكُونَ لَكَ حُمْرُ النَّعَمِ."



١٣٢١- عَنْ أَبِي مُوسَى قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ، إِذَا بَعَثَ أَحَدًا مِنْ أَصْحَابِهِ فِي بَعْضِ أَمْرِهِ قَالَ: "بَشِّرُوا وَلاَ تُنَفِّرُوا، وَيَسِّرُوا وَلاَ تُعَسِّرُوا."

# HZ. PÊXEMBER
## REHBEREK SEMÎMÎ Û ZANA

١٣٢٢- عَنِ أبي مُوسَى قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ، إِذَا بَعَثَ أَحَدًا مِنْ أَصْحَابِهِ فِي بَعْضِ أَمْرِهِ قَالَ: "بَشِّرُوا وَلَا تُنَفِّرُوا، وَيَسِّرُوا وَلَا تُعَسِّرَوا."



**1319.** Muhemmed bin el-Munkedir (r.) ji Rebî'e bin 'Ebbad ed-Dîlî bihîstiye digot: "Berî ku Resûlê Xwedê (s.) hîcretê Medînê bike, min dît çû cihê ku mirovan li Mînayê war danîn û ji wan re digot: *'Gelî mirovan! Xwedê Ezze we Celle emrê we dike ku hûn tenê ji wî re îbadet bikin û tu şirîka jê re çênekin…'*"

(HM16120 Ibn Hanbel, III, 492)



**1320.** Ji Ebû Hazim (r.) hatiye rîwayetkirin ku Sehl bin Se'd (r.) jê re gotiye ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Xeyberê gotiye: "*… Hêdî hêdî here heta tu bigihê dera ku ew lê ne. Piştre ewan de'wetî Îslamê bike û heqê Xwedê yê li ser wan ku lazim e pêkbînin ji wan re bêje. Ez sond dixwim bi Xwedê! Heke ku Xwedê bi wasîta te şexsekî tenê hîdayet bike, ji te re ji devehên sor xêrtir e.*"

(M6223 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 34; B4210 Buxarî, Mexazî, 39)



**1321.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) sehabiyek xwe dişande wezîfeyekî digot: "*Mizgîniyê bidin nefretê nedin kirin; rihet bikin zehmet nekin.*"

(M4525 Muslim, Cîhad we siyer, 6)

# HZ. PÊXEMBER
## REHBEREK SEMÎMÎ Û ZANA

**1322.** Ji Ebû Mûsa (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) sehabiyek xwe dişande wezîfeyekî digot: "*Mizgîniyê bidin nefretê nedin kirin; rihet bikin zehmet nekin.*"

(M4525 Muslim, Cîhad we siyer, 6)



١٣٢٣- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: ...سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ رَأَى مُنْكَرًا فَاسْتَطَاعَ أَنْ يُغَيِّرَهُ بِيَدِهِ فَلْيُغَيِّرْهُ بِيَدِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِلِسَانِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِقَلْبِهِ، وَذَلِكَ أَضْعَفُ الْإِيمَانِ."



١٣٢٤- عَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ الْيَمَانِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ لَتَأْمُرُنَّ بِالْمَعْرُوفِ وَلَتَنْهَوُنَّ عَنِ الْمُنْكَرِ أَوْ لَيُوشِكَنَّ اللَّهُ أَنْ يَبْعَثَ عَلَيْكُمْ عِقَابًا مِنْهُ ثُمَّ تَدْعُونَهُ فَلاَ يَسْتَجِيبُ لَكُمْ."



١٣٢٥- عَنْ تَمِيمٍ الدَّارِىِّ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "اَلدِّينُ النَّصِيحَةُ" قُلْنَا: لِمَنْ؟ قَالَ: "لِلَّهِ وَلِكِتَابِهِ وَلِرَسُولِهِ وَلأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ وَعَامَّتِهِمْ."



١٣٢٦- عَنْ أبي وَائِلٍ قَالَ: كَانَ عَبْدُ اللَّهِ يُذَكِّرُ النَّاسَ فِي كُلِّ خَمِيسٍ، فَقَالَ لَهُ رَجُلٌ: يَا أَبَا عَبْدِ الرَّحْمَنِ، لَوَدِدْتُ أَنَّكَ ذَكَّرْتَنَا كُلَّ يَوْمٍ، قَالَ: أَمَا إِنَّهُ يَمْنَعُنِي مِنْ ذَلِكَ أَنِّي أَكْرَهُ أَنْ أُمِلَّكُمْ، وَإِنِّي أَتَخَوَّلُكُمْ بِالْمَوْعِظَةِ كَمَا كَانَ النَّبِيُّ صَلّى اللَّهُ عَلَيْهِ وَسَلّمَ يَتَخَوَّلُنَا بِهَا مَخَافَةَ السَّآمَةِ عَلَيْنَا.

**1323.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Kesê ji hewe xirabiyekî bibîne û karibe bi destê xwe rast bike, bila bi destê xwe rast bike, heke ne karî bila bi zimanê xwe, heke ne karî bila bi dilê xwe. Ev jî lazimiya îmanê ya herî piçûk e."*

D1140 Ebû Dawûd, Salat, 239-242)



**1324.** Ji Huzeyfe bin el-Yeman (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bi Wî yê ku nefsa min di destê wî de ye sond dixwim: An hûnê emrê bi qenciyê û men'a ji xirabiyê bikin an jî nêzîk e ku Xwedê ji milê xwe ve ezabekî bi ser we de bi rê ke, piştre jî hûn ê dua bikin belê ew ê dua we qebûl neke."*

(T2169 Tirmizî, Fîten, 9)



**1325.** Ji Temîm ed-Darî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dîn semîmiyet e."* Me got: "Ji kî re?" Got: *"Ji Xwedê re, ji kitêba wî re, ji Resûlê Wî re, ji pêşîvanê misilmanan re û ji tev misilmanan re."*

(M196 Muslim, Îman, 95)



**1326.** Ebû Waîl (r.) dibêje: "Ebdullah bin Mesûd (r.) her roja pêşemê we'z li mirovan dikir. Zilamekî jê re got: "Ya Ebû Ebdirrehman! Xwezî te her roj we'z li me kiriba!" Ewî got: "Zanibin ku tişta men'a min ji vê dike ew e ku naxwazim hewe aciz bikim. Bêguman ez navberê didime we'zê, mîna ku Resûlê Xwedê (s.) ji tirsa ku me aciz neke navber dida we'zê."

(B70 Buxarî, Ilim, 12)

# HZ. PÊXEMBER
## PERWERDEKARÊ HERÎ BAŞ

١٣٢٧- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَأْتِيكُمْ رِجَالٌ مِنْ قِبَلِ الْمَشْرِقِ يَتَعَلَّمُونَ فَإِذَا جَاءُوكُمْ فَاسْتَوْصُوا بِهِمْ خَيْرًا."



١٣٢٨- عَنْ مُعَاوِيَةَ بْنِ الحَكَمِ السُّلَمِيِّ قَالَ:... مَا رَأَيْتُ مُعَلِّماً قَبْله وَلَا بَعْدَه أَحْسَنَ تَعْلِيماً مِنْهُ، فَوَاللَّه! مَا كَهَرنَي ولَا ضَرَبَني وَلَا شَتَمَنِي، قَالَ: "إِنَّ هَذِهِ الصَّلَاةَ لا يَصْلُحُ فِيهَا شَيْءٌ مِنْ كَلَامِ النَّاسِ، إِنَّمَا هُوَ التَّسْبِيحُ والتَّكْبِيرُ، وقِرَاءَةُ الْقُرآنِ."



١٣٢٩- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَسِّرُوا وَلاَ تُعَسِّرُوا وَبَشِّرُوا وَلاَ تُنَفِّرُوا."



١٣٣٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَتَخَوَّلُنَا بِالْمَوْعِظَةِ فِى الْأَيَّامِ مَخَافَةَ السَّآمَةِ عَلَيْنَا.



١٣٣١- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَسْرُدُ سَرْدَكُمْ هَذَا وَلَكِنَّهُ كَانَ يَتَكَلَّمُ بِكَلَامٍ يُبَيِّنُه فَصْلٌ يَحْفَظُهُ مَنْ جَلَسَ إِلَيْهِ.

# HZ. PÊXEMBER
## PERWERDEKARÊ HERÎ BAŞ

**1327.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji bo (dînê xwe) hîn bibin wê ji milê Rojhilat ve mirovin werine cem hewe. Dema hatin, wesiyeta qenciyê li wan bikin."*

(T2651 Tirmizî, Ilim, 4; İM249, Ibn Maceh, Sunnet, 22)



**1328.** Muawiye bin el-Hekem es-Sulemî, (dema di nimêjê de şitexilî bû û sehabiyan xwe pê re aciz kiribûn de) buyer wiha îfade kiriye: "... Min ne berî wî û ne jî piştî wî keseke ji wî baştir bide hînkirin nedît. Wellahî Resûlê Xwedê (s.) ne itab li min kir, ne li min xist ne jî heqaret li min kir. Tenê wiha got: *"Di van nimêjan de xeberdana mirovan çênabe. Nimêj tenê tesbîh, tekbîr û xwendina Qur'anê ye."*

(M1199 Muslim, Mesacid, 33)



**1329.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Rihet bikin zehmet nekin; mizgîniyê bidin nefretê nedin kirin."

(B69 Buxarî, Ilim, 11)



**1330.** Ibn Mesûd (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) ji bo ku me aciz neke nesîhet û we'zên xwe di hinek rojên diyarkirî de dikirin."

(T2855 Tirmizî, Edeb, 72)



**1331.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) weke hewe şitexaliya xwe nedida ser hev. Belê xeberdana wî yek û yek bû bê weko kesê ku li cem rûniştî (guhdarî kirî) dikarî ji ber bike."

(T3639 Tirmizî, Menaqib, 9)

# BEY'ET
## PEYMANEKA JI KEZEBÊ

١٣٣٢- عَنْ زُهْرَةَ بْنِ مَعْبَدٍ، عَنْ جَدِّهِ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ هِشَامٍ وَكَانَ قَدْ أَدْرَكَ النَّبِيَّ ﷺ وَذَهَبَتْ بِهِ أُمُّهُ زَيْنَبُ بِنْتُ حُمَيْدٍ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَقَالَتْ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، بَايِعْهُ، فَقَالَ: "هُوَ صَغِيرٌ"، فَمَسَحَ رَأْسَهُ وَدَعَا لَهُ.



١٣٣٣- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِى مَجْلِسٍ، فَقَالَ: "تُبَايِعُونِى عَلَى أَنْ لاَ تُشْرِكُوا بِاللَّهِ شَيْئًا، وَلاَ تَزْنُوا، وَلاَ تَسْرِقُوا، وَلاَ تَقْتُلُوا النَّفْسَ الَّتِى حَرَّمَ اللَّهُ إِلاَّ بِالْحَقِّ، فَمَنْ وَفَى مِنْكُمْ فَأَجْرُهُ عَلَى اللَّهِ، وَمَنْ أَصَابَ شَيْئًا مِنْ ذَلِكَ فَعُوقِبَ بِهِ، فَهُوَ كَفَّارَةٌ لَهُ، وَمَنْ أَصَابَ شَيْئًا مِنْ ذَلِكَ فَسَتَرَهُ اللَّهُ عَلَيْهِ، فَأَمْرُهُ إِلَى اللَّهِ إِنْ شَاءَ عَفَا عَنْهُ، وَإِنْ شَاءَ عَذَّبَهُ."



١٣٣٤- قَالَ جَرِيرٌ: أَتَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ فَقُلْتُ لَهُ: أُبَايِعُكَ عَلَى السَّمْعِ وَالطَّاعَةِ فِيمَا أَحْبَبْتُ وَفِيمَا كَرِهْتُ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "أَوَتَسْتَطِيعُ ذَلِكَ يَا جَرِيرُ؟ أَوَتُطِيقُ ذَلِكَ؟" قَالَ: "قُلْ فِيمَا اسْتَطَعْتُ" فَبَايَعَنِى وَالنُّصْحِ لِكُلِّ مُسْلِمٍ.

# BEY'ET
## PEYMANEKA JI KEZEBÊ

**1332.** Zuhre bin Me'bed ji kalkê xwe yê ku gihatî dewra Pêxember (s.) rîwayet kiriye ku dayîka wî Zeyneb binti Humeyd ew bire cem Resûlê Xwedê (s.) û jê re got: "Ya Resûlê Xwedê! Bey'etê jê bistîne." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ew hê piçûk e"* û destê xwe ser serê wî re bir û jê re dua kir."

(B2501 Buxarî, Şîrket, 13)



**1333.** Ubade bin es-Samit (r.) dibêje: "Em bi Resûlê Xwedê (s.) re di civatekî de bûn. Ji me re wiha got: *"Ehd û peymanê bidine min ku hûn tiştekî ji Xwedê re nekine şirîk, hûn zînayê nekin, hûn diziyê nekin, hûn bi neheqî ew canê ku Xwedê heram kirî nekujin. Kesê ji hewe li ser soza xwe bimîne, xêra wî li ser Xwedê ye (ewê bide). Kesê (gunehekî) ji van bike û were cezakirin, ev jê re dibe kefaret. Weki dî kesê gunehek ji van kir û Xwedê ew sitirand, halê wî dimîne hêviya Xwedê ve; bi vê wê wî kesî efû bike û bi vê jî wê wî kesî ceza bike."*

(M4461 Muslim, Hudûd, 41)



**1334.** Cerîr (r.) dibêje: "Ez çûme cem Resûlê Xwedê (s.) û min jê re got: 'Xweşa min here û xweşa min neçe di her xusûsî de ez li ser guhdarîkirin û îtaetê soz didime te.' Resûlê Xwedê (s.) got: '*Ma tê karibe vê bike ey Cerîr! Ma wê qeweta te bi vê were?*' Piştre wiha got: '*Bêje di xusûsên ku ez dikarim de.*' Piştre li ser semîmiyetbûna digel Misilmanan ji min bey'et sitand.'"

(N4179 Nesaî, Bey'et, 16)

# MIHACIR Û ENSAR
## NIFŞÊ ÎSLAMÊ YÊ YEKEMÊ MUBAREK

١٣٣٥- عَنْ حُمَيْدٍ الطَّوِيلِ: سَمِعْتُ أَنَسَ بْنَ مَالِكٍ ﷺ قَالَ: كَانَتِ الأَنْصَارُ يَوْمَ الْخَنْدَقِ تَقُولُ: نَحْنُ الَّذِينَ بَايَعُوا مُحَمَّدَا عَلَى الْجِهَادِ مَا حَيِينَا أَبَدَا فَأَجَابَهُمُ: اللَّهُمَّ لاَ عَيْشَ إِلاَّ عَيْشُ الآخِرَهْ فَأَكْرِمِ الأَنْصَارَ وَالْمُهَاجِرَهْ.



١٣٣٦- عَنْ أَنَسٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "حُبُّ الأَنْصَارِ آيَةُ الإِيمَانِ، وَبُغْضُهُمْ آيَةُ النِّفَاقِ."



١٣٣٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَيْدٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَوْلاَ الْهِجْرَةُ لَكُنْتُ امْرَأً مِنَ الأَنْصَارِ، وَلَوْ سَلَكَ النَّاسُ وَادِيًا أَوْ شِعْبًا لَسَلَكْتُ وَادِيَ الأَنْصَارِ وَشِعْبَهَا."



١٣٣٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُهَاجِرُ مَنْ هَجَرَ مَا نَهَى اللَّهُ عَنْهُ."

# MIHACIR Û ENSAR
## NIFŞÊ ÎSLAMÊ YÊ YEKEMÊ MUBAREK

**1335.** Humeyd et-Tewîl gotiye: "Min ji Enes bin Malik (r.) bihîst digot: 'Roja Xendekê Ensariyan (dema xendek dikolan) digotin: 'Em ew kesên ku bey'et dane Muhemmed ku heta sax bin em ê digel wî cîhadê bikin.' Vêca Resûlê Xwedê (s.) bersiva wan wiha dida: *'Xwedayê min! Jiyan encex jiyana axîretê ye. Tu îkrama Ensarî û Muhaciran bike.'"*

(B3796 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 9)



**1336.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji Ensariyan hezkirin, elametê îmanê ye û ji wan nefret kirin jî elametê nîfaqê ye."*

(M236 Muslim, Îman, 128)



**1337.** Ji Ebdullah bin Zeyd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke ne ji hîcretê ba helbet ez ê mirovek ji Ensariyan bûma. Heke mirov di rêya newalekî an çiyayekî de biçûna, ez ê di newala an rêya çiyayê Ensariyan de biçûma."*

(B7245 Buxarî, Temennî, 9)



**1338.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Misilman ew kes e ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin. Muhacir ew kes e ku terka tiştên ku Xwedê heram kirine dike."*

(B10 Buxarî, Îman, 4)

# ESHABÊ SUFFE
## FEDAIYÊN ILMÊ

١٣٣٩- عَنْ عَلِيٍّ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لَا أُعْطِيكُمْ وَأَدَعُ أَهْلَ الصُّفَّةِ تَلَوَّى بُطُونُهُمْ مِنْ الْجُوعِ."



١٣٤٠- حَدَّثَنَا مُجَاهِدٌ: أَنَّ أَبَا هُرَيْرَةَ كَانَ يَقُولُ: ...إِذَا أَتَتْهُ صَدَقَةٌ بَعَثَ بِهَا إِلَيْهِمْ وَلَمْ يَتَنَاوَلْ مِنْهَا شَيْئًا، وَإِذَا أَتَتْهُ هَدِيَّةٌ أَرْسَلَ إِلَيْهِمْ فَأَصَابَ مِنْهَا وَأَشْرَكَهُمْ فِيهَا...



١٣٤١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: كَانَ أَهْلُ الصُّفَّةِ أَضْيَافَ أَهْلِ الْإِسْلَامِ لَا يَأْوُونَ عَلَى أَهْلٍ وَلَا مَالٍ...

# ESHABÊ SUFFE
## FEDAIYÊN ILMÊ

**1339.** Ji Hz. Elî (r.) hatiye ragihandin ku (dema qîza Pêxember (s.) Fatîme (r.) ji bo xizmeta karên malê bike xizmetkarek xwest) Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ez Ehlê Suffeyê ji birçiya ziktewandî nahêlim û nadime we."*

(HM596 Ibn Hanbel, I, 80; HM838 Ibn Hanbel, I, 107)



**1340.** Ji Mucahid hatiye ragihandin ku Ebû Hureyre (r.) gotiye: "... Dema malê zikatê ji Resûlê Xwedê (s.) re dihat, bêyî ku tiştekî jê bigire rasterast dişiyande ji Ehlê Suffeyê re. Dema jê re hediyeyek hatiba, ji wan re dişiyand û hinek jî ji xwe re diveqetand ew dikirin şirîkê hediyeyê..."

(B6452 Buxarî, Riqaq, 17)



**1341.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: *"Ehlê Suffeyê mêhvanê Misilmanan bûn. Ne malbata wan hebû ne jî malê wan hebû..."*

(T2477 Tirmizî, Sifetu'l-qiyame, 36; B6452 Buxarî, Riqaq, 17)

# MUELLEFEÊ QULÛB
## BERÎ HER TIŞTÎ DILXWEŞKIRIN

١٣٤٢- عَنِ ابْنِ شِهَابٍ أَخْبَرَنِى أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ... فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "فَإِنِّى أُعْطِى رِجَالاً حَدِيثِى عَهْدٍ بِكُفْرٍ أَتَأَلَّفُهُمْ أَفَلاَ تَرْضَوْنَ أَنْ يَذْهَبَ النَّاسُ بِالأَمْوَالِ وَتَرْجِعُونَ إِلَى رِحَالِكُمْ بِرَسُولِ اللَّهِ فَوَاللَّهِ! لَمَا تَنْقَلِبُونَ بِهِ خَيْرٌ مِمَّا يَنْقَلِبُونَ بِهِ.



١٣٤٣- عَنْ صَفْوَانَ بْنِ أُمَيَّةَ قَالَ: أَعْطَانِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ حُنَيْنٍ وَإِنَّهُ لَأَبْغَضُ الْخَلْقِ إِلَيَّ فَمَا زَالَ يُعْطِينِى حَتَّى إِنَّهُ لَأَحَبُّ الْخَلْقِ إِلَيَّ.



١٣٤٤- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: كَانَ الرَّجُلُ يَأْتِي النَّبِيَّ ﷺ فَيُسْلِمُ لِشَيْءٍ يُعْطَاهُ مِنْ الدُّنْيَا فَلَا يُمْسِي حَتَّى يَكُونَ الْإِسْلَامُ أَحَبَّ إِلَيْهِ وَأَعَزَّ عَلَيْهِ مِنْ الدُّنْيَا وَمَا فِيهَا.

# MUELLEFEÊ QULÛB
## BERÎ HER TIŞTÎ DILXWEŞKIRIN

**1342.** Ibn Şîhab ji Enes bin Malik (r.) rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) (li ser dilnexweşiya pêşber levakirina xenîmeta Herba Huneynê çêbûyî) gotiye: *"Ez ji bo dilê wan bi Îslamê xweş bikim (malê xenîmetê) didim kesên nû misilmanbûyî. Ma hûn ne razî ne ku mirov bi mal vegerihin malê xwe û hûn bi Pêxember ve vegerihin malê xwe? Ez sond dixwim bi Xwedê! Ew (Pêxemberê) ku hûn bi wî re divegerihin malê xwe, ji wî malê ku ew pê divegerihin malê xwe çêtir e."*

(M2436 Muslim, Zekat, 132)



**1343.** Sefwan bin Umeyye gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) Roja Huneynê (malê xenîmetê) da min. (Wî çaxî) mirovê ku zêde min jê nefret dikir ew bû. Belê ewî her mal li min zêde kir, êdî mirovê zêde ku min hez jê dikir ew bû."

(T666 Tirmizî, Zekat, 30)



**1344.** Enes (bin Malik) (r.) gotiye: "Mirovek dihate cem Pêxember (s.) û bi sebep tişteka dinyayî didanê de misilman dibû. Belê dema lê dibû êvar êdî li cem wî Îslam ji dinyayê û ji tiştên di dinyayê de bi qîmettir û şîrîntir dibû."

(HM12073 Ibn Hanbel, III, 107)

# XÎLAFÊN DI NEQEBA SEHABIYAN DE
## FIKIRÎNA CUDA EGERA TEBÎETÊ ÎNSANI YE

١٣٤٥- عَنْ سَعِيدِ بْنِ جُبَيْرٍ قَالَ: قُلْتُ لِعَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ: يَا أَبَا الْعَبَّاسِ عَجَبًا لِاخْتِلَافِ أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي إِهْلَالِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ حِينَ أَوْجَبَ فَقَالَ: إِنِّي لَأَعْلَمُ النَّاسِ بِذَلِكَ إِنَّهَا إِنَّمَا كَانَتْ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ حَجَّةً وَاحِدَةً فَمِنْ هُنَالِكَ اخْتَلَفُوا...



١٣٤٦- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ الْأَحْزَابِ: "لاَ يُصَلِّيَنَّ أَحَدٌ الْعَصْرَ إِلاَّ فِى بَنِى قُرَيْظَةَ." فَأَدْرَكَ بَعْضُهُمُ الْعَصْرَ فِى الطَّرِيقِ، فَقَالَ بَعْضُهُمْ: لاَ نُصَلِّى حَتَّى نَأْتِيَهَا وَقَالَ بَعْضُهُمْ: بَلْ نُصَلِّى، لَمْ يُرِدْ مِنَّا ذَلِكَ، فَذُكِرَ ذَلِكَ لِلنَّبِيِّ ﷺ فَلَمْ يُعَنِّفْ وَاحِدًا مِنْهُمْ.



١٣٤٧- عَنْ عِكْرِمَةَ قَالَ: أَرْسَلَ ابْنُ عَبَّاسٍ إِلَى زَيْدِ بْنِ ثَابِتٍ أَتَجِدُ فِى كِتَابِ اللَّهِ لِلْأُمِّ ثُلُثُ مَا بَقِىَ؟ فَقَالَ زَيْدٌ: إِنَّمَا أَنْتَ رَجُلٌ تَقُولُ بِرَأْيِكَ وَأَنَا رَجُلٌ أَقُولُ بِرَأْيِى.



١٣٤٨- عَنْ مَرْوَانَ بْنِ الْحَكَمِ: أَنَّ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ لَمَّا طُعِنَ اسْتَشَارَهُمْ فِى الْجَدِّ فَقَالَ: إِنِّى كُنْتُ رَأَيْتُ فِى الْجَدِّ رَأْياً، فَإِنْ رَأَيْتُمْ أَنْ تَتَّبِعُوهُ فَاتَّبِعُوهُ.



# XÎLAFÊN DI NEQEBA SEHABIYAN DE
## FIKIRÎNA CUDA EGERA TEBÎETÊ ÎNSANI YE

**1345.** Seîd bin Cabir (r.) gotiye: "Min ji Ebdullah bin Ebbas (r.) re got: 'Ey Ebu'l-Ebbas! Ez ecêbmayî dimînim dema Resûlê Xwedê (s.) çûyî heccê çewa sehabiyan, di wextê ku Resûlê Xwedê ketî îhramê de îxtilaf kirine!' Vêca Ibn Ebbas (r.) got: 'Bi rastî kesê vê meselê baştir dizane ez im. Resûlê Xwedê (s.) tenê carekî hec kiriye; ji ber vê yekê mirovan di vê meselê de ixtîlaf kirine…'"

(HM2358 Ibn Hanbel, I, 260; D1770 Ebû Dawûd, Menasik, 21)



**1346.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Ehzabê (Herba Xendekê) gotiye: *"Bila tu kes nimêja esrê ji bilî cihê Qureyziyan de neke."* Vêca hê di rê de li wan bû esir. Hinekan gotin: "Heta em negihin cihê Qureyziyan em nimêj nakin." Hinekan jî gotin: "Em ê nimêja esrê (di rê de) kin, lewra pêxember (s.) ev ji me nexwestiye (meqseda wî ne ev bûye)". Piştre ev hadîse ji Resûlê Xwedê (s.) re hate gotin, ewî lome li tu kesî nekir.

(B4119 Buxarî, Mexazî, 31)



**1347.** 'Ikrîme gotiye: "Ibn Ebbas (r.) xeber şiyande ji Zeyd bin Sabit re, got: 'Ma tu di Kitêba Xwedê de hukmê sêyeka malê ji mîrasê mayî ji dayîkê re ye dibîne?' Zeyd bin Sabit (r.) got: 'Tu zilamek î ku li gor fikra xwe dibêjî û ez jî zilamek im ku li gor fikra xwe dibêjim."

(DM2903 Darimî, Fera'id, 3)



**1348.** Ji Merwan bin el-Hekem hatiye ragihandin ku di dema Umer bin el-Xettab (r.) birîndar bûyî de di derheqê mîrasa ji kalik re dikeve şêwra xwe bi wan kir û wiha got: "Min di derheqê mîrasa ji kalik re dikeve fikrek beyan kiribû, vêca heke hûn jî munasib bibînin li pey herin."

(DM2943 Dârimî, Fera'id, 12)



١٣٤٩- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْعَاصِ أَنَّهُ سَمِعَ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا حَكَمَ الْحَاكِمُ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَصَابَ فَلَهُ أَجْرَانِ. وَإِذَا حَكَمَ فَاجْتَهَدَ ثُمَّ أَخْطَأَ فَلَهُ أَجْرٌ."

**1349.** Ji 'Emr bin el-'As (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Dema ku hakim ictîhad bike û hukm bide vêca di içtîhada xwe de îsabet bike jê re du xêr hene, belê heke ictîhad (jibo bidestxistina heqiyê hewldan) kir û hukum da vêca di içtîhada xwe de xeta kir jê re xêrek tenê heye."*

(M4487 Muslim, Eqdiye, 15)

١٣٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: أُتِيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لَيْلَةَ أُسْرِيَ بِهِ بِقَدَحَيْنِ مِنْ خَمْرٍ وَلَبَنٍ فَنَظَرَ إِلَيْهِمَا فَأَخَذَ اللَّبَنَ، فَقَالَ لَهُ جِبْرِيلُ عَلَيْهِ السَّلاَمُ: الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى هَدَاكَ لِلْفِطْرَةِ، لَوْ أَخَذْتَ الْخَمْرَ غَوَتْ أُمَّتُكَ.



١٣٥١- عَنْ أَبِى ذَرٍّ قَالَ: سَأَلْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ : هَلْ رَأَيْتَ رَبَّكَ؟ قَالَ: "نُورٌ أَنَّى أَرَاهُ."



١٣٥٢- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا قَالَتْ: مَنْ حَدَّثَكَ أَنَّ مُحَمَّدًا ﷺ رَأَى رَبَّهُ فَقَدْ كَذَبَ، وَهُوَ يَقُولُ: ﴿لاَ تُدْرِكُهُ الأَبْصَارُ...﴾



١٣٥٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ لَمَّا أُسْرِيَ بِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ ...فَأُعْطِيَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثَلاَثًا: أُعْطِيَ الصَّلَوَاتِ الْخَمْسَ، وَأُعْطِيَ خَوَاتِيمَ سُورَةِ الْبَقَرَةِ، وَغُفِرَ -لِمَنْ لَمْ يُشْرِكْ بِاللَّهِ مِنْ أُمَّتِهِ شَيْئًا- الْمُقْحِمَاتُ.



# ÎSRA Û MÎRAC
## BILINDBÛNEK JI EDETÎDER

**1350.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku şeva ku Resûlê Xwedê (s.) birin Îsrayê, du qedehên ku di yekî de ereq û di ya dîtir de şîr heyî jê re anîn. Vêca Resûlê Xwedê (s.) qedeha şîr girt. Li ser vê yekê Cibrîl got: *"Hemd ji wî Xwedayî re be ku berê te da fitretê. Heke te ereq girtiba wê ummeta te ji rê derketiba."*

(N5660 Nesaî, Eşribe, 41)



**1351.** Ebû Zer (r.) dibêje: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: 'Ma te Rebbê Xwe dîtiye?' Ewî got: *'Ew nûr e, ma ez ê çewa Wî bîbînim!'*"

(M443 Muslim, Îman, 291)



**1352.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Kesê bêje: 'Muhemmed Rebbê xwe dîtiye, bêguman ewî derew kiriye.' Lewra Xwedê gotiye: 'Çav Wî nabînin...'" (En'am, 6/103)"

(B7380 Buxarî, Tewhîd, 4)



**1353.** Ebdullah bin Mesûd (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) çûyî Îsrayê... sê tişt danê: Pênc wext nimêj, ayetên dawiya Sûretê Beqere û gunehên mezin yên kesê ji ummeta wî yê ku tu şirîk ji Xwedê re çênekiribin hatin efûkirin."

(M431 Muslim, Îman, 279)



١٣٥٤- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لَمَّا كَذَّبَتْنِى قُرَيْشٌ قُمْتُ فِى الْحِجْرِ فَجَلاَ اللَّهُ لِى بَيْتَ الْمَقْدِسِ فَطَفِقْتُ أُخْبِرُهُمْ عَنْ آيَاتِهِ وَأَنَا أَنْظُرُ إِلَيْهِ."

# HÎCRET
## KOÇKIRINA MEDÎNÊ

١٣٥٥- عَنْ عُمَرَ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "الأَعْمَالُ بِالنِّيَّةِ وَلِكُلِّ امْرِئٍ مَا نَوَى، فَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ إِلَى اللَّهِ وَرَسُولِهِ فَهِجْرَتُهُ إِلَى اللَّهِ وَرَسُولِهِ، وَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ لِدُنْيَا يُصِيبُهَا أَوِ امْرَأَةٍ يَتَزَوَّجُهَا فَهِجْرَتُهُ إِلَى مَا هَاجَرَ إِلَيْهِ."



١٣٥٦- عَنْ عَمْرِو بْنِ مَالِكٍ الْجَنْبِيِّ أَنَّهُ سَمِعَ فَضَالَةَ بْنَ عُبَيْدٍ يَقُولُ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "أَنَا زَعِيمٌ –وَالزَّعِيمُ الْحَمِيلُ– لِمَنْ آمَنَ بِى وَأَسْلَمَ وَهَاجَرَ بِبَيْتٍ فِى رَبَضِ الْجَنَّةِ وَبِبَيْتٍ فِى وَسَطِ الْجَنَّةِ، وَأَنَا زَعِيمٌ لِمَنْ آمَنَ بِى وَأَسْلَمَ وَجَاهَدَ فِى سَبِيلِ اللَّهِ بِبَيْتٍ فِى رَبَضِ الْجَنَّةِ وَبِبَيْتٍ فِى وَسَطِ الْجَنَّةِ وَبِبَيْتٍ فِى أَعْلَى غُرَفِ الْجَنَّةِ مَنْ فَعَلَ ذَلِكَ فَلَمْ يَدَعْ لِلْخَيْرِ مَطْلَبًا وَلاَ مِنَ الشَّرِّ مَهْرَبًا يَمُوتُ حَيْثُ شَاءَ أَنْ يَمُوتَ."



١٣٥٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ هِجْرَةَ بَعْدَ الْفَتْحِ وَلَكِنْ جِهَادٌ وَنِيَّةٌ، وَإِذَا اسْتُنْفِرْتُمْ فَانْفِرُوا."



**1354.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema Qureyşiyan (di derheqê Îsrayê de) bawerî bi min neanîn, ez di Hicrê de rabûme şipiya. Xwedê Beytu'l-Meqdis anî ber çavê min. Vêca ez rabûm min lê meyze dikir û elametê wê ji wan re digot."*

(B3886 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 41)

# HÎCRET
## KOÇKIRINA MEDÎNÊ

**1355.** Ji Umer bin el-Xettab (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman emel li gor niyetê ne. Ji her kesî re tişta ku niyet kirî heye. Kesê ji bo Xwedê û Resûlê wî hîcret kirî hîcreta wî bal Xwedê û Resûlê Wî ve ye. Kesê hîcreta wî ji bo bidestxistina (feydeyek) dinyayê be an jî ji bo nîkahkirina jinekê be, hîcreta wî bal wê tişta bûyî sebebê hîcretê ve ye."*

(B54 Buxarî, Îman, 41)



**1356.** 'Emr bin Malik el-Cenbî ji Fedale bin 'Ubeyd bihîstiye digot: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Ez kefil im ku kesê bawerî bi min anîbe û Misilman bûbe û hîcret kiribe ku wê jê re xaniyeke di beravê cennetê de û xaniyek jî di nîvê cennetê de hebe. Ez kefil im ku kesê bawerî bi min anîbe û Misilman bûbe û di rêya Xwedê de cîhad kiribe ku wê jê re xaniyek di beravê cennetê de û xaniyek di nîvê cennetê de û xaniyek jî di dereca herî bilind de hebe. Kesê vê bike, ewî xêreka bidestnekirî û xirabiyeka xwe jê nerevandî nehiştiye. Li ku derê bimire bila bimire ferq nake.'"*

(N3135 Nesaî, Cîhad, 19)



**1357.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Piştî fethê (fetha Mekkeyê) êdî hîcret nîn e. Belê cîhad û niyet hey e. Dema bangê we bo cîhadê hate kirin, bi lez beşdar bibin."*

(B2783 Buxarî, Cîhad, 1)



١٣٥٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْمُسْلِمُ مَنْ سَلِمَ الْمُسْلِمُونَ مِنْ لِسَانِهِ وَيَدِهِ، وَالْمُهَاجِرُ مَنْ هَجَرَ مَا نَهَى اللَّهُ عَنْهُ."



١٣٥٩- عَنْ مُعَاوِيَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لاَ تَنْقَطِعُ الْهِجْرَةُ حَتَّى تَنْقَطِعَ التَّوْبَةُ، وَلاَ تَنْقَطِعُ التَّوْبَةُ حَتَّى تَطْلُعَ الشَّمْسُ مِنْ مَغْرِبِهَا."

# HERBÊN KU RESÛLÊ XWEDÊ BEŞDAR BÛYÎ

## DI HERBÊ DE JÎ REHMET

١٣٦٠- عَنْ أَبِى مُوسَى الأَشْعَرِيِّ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُسَمِّى لَنَا نَفْسَهُ أَسْمَاءً، فَقَالَ: "أَنَا مُحَمَّدٌ، وَأَحْمَدُ، وَالْمُقَفِّى، وَالْحَاشِرُ، وَنَبِيُّ التَّوْبَةِ، وَنَبِيُّ الرَّحْمَةِ."



١٣٦١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "لاَ تَمَنَّوْا لِقَاءَ الْعَدُوِّ، فَإِذَا لَقِيتُمُوهُمْ فَاصْبِرُوا."



١٣٦٢- أَنَّ أَبَا سَعِيدٍ الْخُدْرِيَّ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ حَدَّثَهُ قَالَ: قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَيُّ النَّاسِ أَفْضَلُ؟ فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ: "مُؤْمِنٌ يُجَاهِدُ فِي سَبِيلِ اللَّهِ بِنَفْسِهِ وَمَالِهِ."



**1358.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Misilman ew kes e ku mirov ji dest û ji zimanê wî eziyetê nabînin. Muhacir ew kes e ku terka tiştên ku Xwedê heram kirine dike."*

(B10 Buxarî, Îman, 4)



**1359.** Ji Muawiye hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye: digot: *"Heta deriyê tobê neyê girtin wê hîcret dewam bike û heta roj, ji rojava ve dernekeve deriyê tobê nayê girtin."*

(D2479 Ebû Dawûd, Cîhad, 2)

# HERBÊN KU RESÛLÊ XWEDÊ BEŞDAR BÛYÎ

## DI HERBÊ DE JÎ REHMET

**1360.** Ji Ebû Mûsa el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) navên xwe wiha ji me re digot: *'Ez Muhemmed im, Ehmed im, (yê piştî pêxemberan hatî) el-Muqeffa me, (yê ku mirov li pey kom dibin) el-Haşir im, Pêxemberê Tobê me û Pêxemberê Rehmetê me.'"*

(M6108 Muslim, Feda'il, 126)



**1361.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Daxwaza liqabûna neyar nekin. Vêca dema hûn liqayî neyar hatin sebrê bikin."*

(M4541 Muslim, Cîhad we siyer, 19)



**1362.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku hate gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Kî mirov qenctir e?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ew muminê bi canê xwe û bi malê xwe di rêya Xwedê de cîhadê dike."*

(B2786 Buxarî, Cîhad, 2)



١٣٦٣- عَنْ نَافِعٍ: أَنَّ عَبْدَ اللَّهِ ﷺ أَخْبَرَهُ: أَنَّ امْرَأَةً وُجِدَتْ فِى بَعْضِ مَغَازِى النَّبِيِّ ﷺ مَقْتُولَةً، فَأَنْكَرَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ قَتْلَ النِّسَاءِ وَالصِّبْيَانِ.



١٣٦٤- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ بُرَيْدَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا بَعَثَ أَمِيرًا عَلَى جَيْشٍ أَوْصَاهُ فِى خَاصَّةِ نَفْسِهِ بِتَقْوَى اللَّهِ وَمَنْ مَعَهُ مِنَ الْمُسْلِمِينَ خَيْرًا فَقَالَ: "اغْزُوا بِسْمِ اللَّهِ وَفِى سَبِيلِ اللَّهِ قَاتِلُوا مَنْ كَفَرَ بِاللَّهِ، اغْزُوا وَلاَ تَغُلُّوا وَلاَ تَغْدِرُوا وَلاَ تُمَثِّلُوا وَلاَ تَقْتُلُوا وَلِيدًا."

# BEDIR
## PÊŞBER ZILMÊ DE ZEFERA YEKEM

١٣٦٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَمْرٍو: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَرَجَ يَوْمَ بَدْرٍ فِى ثَلاَثِمِائَةٍ وَخَمْسَةَ عَشَرَ، فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اللَّهُمَّ إِنَّهُمْ حُفَاةٌ فَاحْمِلْهُمْ، اللَّهُمَّ إِنَّهُمْ عُرَاةٌ فَاكْسُهُمْ، اللَّهُمَّ إِنَّهُمْ جِيَاعٌ فَأَشْبِعْهُمْ"، فَفَتَحَ اللَّهُ لَهُ يَوْمَ بَدْرٍ فَانْقَلَبُوا حِينَ انْقَلَبُوا وَمَا مِنْهُمْ رَجُلٌ إِلاَّ وَقَدْ رَجَعَ بِجَمَلٍ أَوْ جَمَلَيْنِ وَاكْتَسَوْا وَشَبِعُوا.



**1363.** Ji Nafi' hatiye rîwayetkirin ku Ebdullah (bin Umer) jê re gotiye: "Di herbekî de jineke kuştî hate dîtin. Vêca Resûlê Xwedê (s.) kuştina jin û zarokan qebûl nekir."

(B3014 Buxarî, Cihad, 147)



**1364.** Suleyman bin Bureyde ji bavê xwe rîwayet kiriye ku dema Resûlê Xwedê serleşkerek teyînê leşkerekî an jî komleşekerekî dikir, pêşî şîreta teqwatiya Xwedê lê dikir û şîreta miamela xweş bi yên pê re ne dikir û piştre digot: *"Bi navê Xwedê û di rêya Xwedê de herbê bikin. Bi wan kesan re herbê bikin ku înkara Xwedê dikin. Herbê bikin belê xayîntiyê di malê xenîmetê de nekin. Bi laşê miriyan neleyîzin (parça jê nekin) û zarokan nekujin..."*

(T1408 Tirmizî, Diyat, 14)

# BEDIR
## PÊŞBER ZILMÊ DE ZEFERA YEKEM

**1365.** Ji Ebdullah bin 'Emr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Herba Bedrê bi sêsed û panzdeh kesan ve derket. Resûlê Xwedê ev dua kir: *"Xwedayê min! Ev leşker bêsuwarî ye tu wan suwar bike. Xwedayê min! Ew tazî ne tu wan bi cil bike. Xwedayê min! Ew birçî ne Tu wan têr bike."* Netîcê de Xwedê zefer kire nesîbê wan. Vêca di vegerê de her yek ji wan pê re devehek an du deveh hebû û bi cil û têr vegerihan."

(D2747 Ebû Dawûd, Cihad, 145)



١٣٦٦- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ بَدْرٍ: "اللَّهُمَّ إِنِّي أَنْشُدُكَ عَهْدَكَ وَوَعْدَكَ، اللَّهُمَّ إِنْ شِئْتَ لَمْ تُعْبَدْ." فَأَخَذَ أَبُو بَكْرٍ بِيَدِهِ، فَقَالَ: حَسْبُكَ، فَخَرَجَ وَهُوَ يَقُولُ: ﴿سَيُهْزَمُ الْجَمْعُ وَيُوَلُّونَ الدُّبُرَ.﴾



١٣٦٧- عَنْ مَالِكِ بْنِ حَمْزَةَ بْنِ أَبِى أُسَيْدٍ السَّاعِدِيِّ، عَنْ أَبِيهِ، عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ بَدْرٍ: "إِذَا أَكْثَبُوكُمْ فَارْمُوهُمْ بِالنَّبْلِ، وَلاَ تَسُلُّوا السُّيُوفَ حَتَّى يَغْشَوْكُمْ."

# UHUD
## BI ZEFERÊ RE HEZÎMET

١٣٦٨- عَنْ أَنَسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كُسِرَتْ رَبَاعِيَتُهُ يَوْمَ أُحُدٍ، وَشُجَّ فِى رَأْسِهِ، فَجَعَلَ يَسْلُتُ الدَّمَ عَنْهُ وَيَقُولُ: "كَيْفَ يُفْلِحُ قَوْمٌ شَجُّوا نَبِيَّهُمْ ﷺ وَكَسَرُوا رَبَاعِيَتَهُ وَهُوَ يَدْعُوهُمْ إِلَى اللَّهِ؟"



١٣٦٩- حَدَّثَنَا أَبُو إِسْحَاقَ قَالَ: سَمِعْتُ الْبَرَاءَ بْنَ عَازِبٍ رضي الله عنه يُحَدِّثُ قَالَ: جَعَلَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى الرَّجَّالَةِ يَوْمَ أُحُدٍ –وَكَانُوا خَمْسِينَ رَجُلاً– عَبْدَ اللَّهِ بْنَ جُبَيْرٍ فَقَالَ: "إِنْ رَأَيْتُمُونَا تَخْطَفُنَا الطَّيْرُ، فَلاَ تَبْرَحُوا مَكَانَكُمْ هَذَا حَتَّى أُرْسِلَ إِلَيْكُمْ وَإِنْ رَأَيْتُمُونَا هَزَمْنَا الْقَوْمَ وَأَوْطَأْنَاهُمْ فَلاَ تَبْرَحُوا حَتَّى أُرْسِلَ إِلَيْكُمْ."



**1366.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) Roja Herba Bedrê ev dua kir: *"Xwedayê min! Ez hêvî dikim ku tu ehd û soza xwe pêk bînî. Xwedayê min! Heke te (hezîmeta koma mumina) xwestibe, wî çaxî wê hew îbadet ji te re were kirin."* Vêca Hz. Ebû Bekir (r.) bi destê Pêxember girt û got: 'Ev dua besî te ye.' Êdî Resûlê Xwedê (s.) (ji kon) derket û ev ayet xwend: *'Wê ew kom (a mişrika) bihezime û wê şûnde bireve.'* (Qemer, 54/45) "

(B3953 Buxarî, Mexazî, 4)



**1367.** Malik bin Hemze bin Ebû Useyd es-Sa'idî, bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Herba Bedrê gotiye: *"Dema (neyar) nêzîkê we bûn tîra li wan werênin. Heta ew tam neketin nav we de şûran nekişênin."*

(D2664 Ebû Dawûd, Cîhad, 108)

# UHUD
## BI ZEFERÊ RE HEZÎMET

**1368.** Ji Enes (r.) hatiye ragihandin ku di Roja Uhudê de dinanê Resûlê Xwedê (s.) yê zeniya xarê yê milê rastê şikest û ji serê xwe jî birîndar bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) xwîn ji rûyê xwe paqij dikir û digot: *"Ma ew qewmê ku pêxemberê xwe ji serê wî birîndar kirin û dinanê wî şikandîn wê çewa ifleh bibin? Welhal ewî ew de'wetî Xwedê dikirin!"*

(M4645 Muslim, Cîhad we siyer, 104)



**1369.** Ebû Îshaq ji el-Berra' bin 'Azîb (r.) bihîstiye digot: "Resûlê Xwedê (s.) Roja Uhudê Ebdullah bin Cubeyr kire qumutanê tîrvanên (li ser girê Eyneynê) yên ku hejmara wan pêncî zilam bûn. Resûlê Xwedê (s.) ji wan re got: *'Hûn bibînin ku teyr me digirin direvênin jî heta ez xeberê nedime hewe ji cihê xwe nelepitin. Heke we dît me ew hezimandin, cardî jî heta ez xeberê nedime we ji cihê xwe nelepitin.'*"

(B3039 Buxarî, Cîhad, 164)



١٣٧٠- عَنْ أَنَسٍ ﷺ قَالَ: لَمَّا كَانَ يَوْمُ أُحُدٍ... وَلَقَدْ رَأَيْتُ عَائِشَةَ بِنْتَ أَبِى بَكْرٍ وَأُمَّ سُلَيْمٍ وَإِنَّهُمَا لَمُشَمِّرَتَانِ، أَرَى خَدَمَ سُوقِهِمَا، تُنْقِزَانِ الْقِرَبَ عَلَى مُتُونِهِمَا، تُفْرِغَانِهِ فِى أَفْوَاهِ الْقَوْمِ، ثُمَّ تَرْجِعَانِ فَتَمْلآنِهَا، ثُمَّ تَجِيآنِ فَتُفْرِغَانِهِ فِى أَفْوَاهِ الْقَوْمِ...

# XENDEK
## PARASTINA MEDÎNÊ

١٣٧١- حَدَّثَنَا سَهْلُ بْنُ سَعْدٍ السَّاعِدِيُّ قَالَ: كُنَّا مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِى الْخَنْدَقِ وَهُوَ يَحْفِرُ وَنَحْنُ نَنْقُلُ التُّرَابَ، وَبَصُرَ بِنَا فَقَالَ: "اللَّهُمَّ لاَ عَيْشَ إِلاَّ عَيْشُ الآخِرَهْ فَاغْفِرْ لِلأَنْصَارِ وَالْمُهَاجِرَهْ."



١٣٧٢- عَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: لَمَّا كَانَ يَوْمُ الأَحْزَابِ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَلأَ اللَّهُ بُيُوتَهُمْ وَقُبُورَهُمْ نَارًا، شَغَلُونَا عَنِ الصَّلاَةِ الْوُسْطَى حِينَ غَابَتِ الشَّمْسُ."



١٣٧٣- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِى أَوْفَى قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ الأَحْزَابِ: "اللَّهُمَّ مُنْزِلَ الْكِتَابِ، سَرِيعَ الْحِسَابِ، اهْزِمِ الأَحْزَابَ وَزَلْزِلْهُمْ."



١٣٧٤- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ صُرَدٍ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ يَوْمَ الأَحْزَابِ: "نَغْزُوهُمْ وَلاَ يَغْزُونَنَا."

**1370.** Enes (r.) dibêje: "... Di Roja Uhudê de min qîza Ebû Bekir Aîşe û Ummu Seleme dît. Dewa xwe dabûne hev, bi vir ve dibezîn û bi wir ve dibezin. Min xilxalê wan di lingê wan de didîtin. Vêca li ser pişta xwe meşkê avê tanîn û diberdane devê birîndaran. Piştre divegerihan ew tijî dikirin û carek dî dihatin didane devê birîndaran..."

(B3811 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 18)

# XENDEK
## PARASTINA MEDÎNÊ

**1371.** Sehl bin Se'd es-Sa'idî (r.) gotiye: "Em di Herba Xendekê de digel Resûlê Xwedê bûn. Ewî dikola me jî ax dirakir. Dema em dîtin wiha got: '*Xwedayê min! Jiyan encex jiyana axîretê ye. Tu Ensarî û Muhaciran efû bike.*'"

(B6414 Buxarî, Riqaq, 1)



**1372.** Hz. Elî (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) Di Roja Ehzabê de got: '*Xwedê xaniyên wan û dilên wan tije agir bike! Em ji nimêja esrê kirin heta roj çû ava.*"

(B2931 Buxarî, Cîhad, 98; M1420 Muslim, Mesacid we meedi'u's-salat, 202)



**1373.** Ji Ebdullah bin Ebî Ewfa (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Ehzabê gotiye: "*Ey Xwedayê min yê Kitêb nazil kirî û hesabê bi lez dike! Eşîrên yekbûyî bihezimêne û wan ji hev bike.*"

(B7489 Buxarî, Tewhîd, 34)



**1374.** Ji Suleyman bin Sured (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Ehzabê gotiye: "*Ji vir pê de em ê pêşber wan herbê kin. Ew pêşber me herbê nakin.*"

(B4109 Buxarî, Mexazî, 30)

# FETHA XEYBERÊ
## DERBEYA DAWÎ LI XAYÎNAN

١٣٧٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: لَمَّا أَتَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ خَيْبَرَ قَالَ: "إِنَّا إِذَا نَزَلْنَا بِسَاحَةِ قَوْمٍ فَسَاءَ صَبَاحُ الْمُنْذَرِينَ."



١٣٧٦- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ غَزَا خَيْبَرَ فَأَصَبْنَاهَا عَنْوَةً فَجَمَعَ السَّبْيَ.



١٣٧٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما قَالَ: ...كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لَمَّا ظَهَرَ عَلَى خَيْبَرَ أَرَادَ إِخْرَاجَ الْيَهُودِ مِنْهَا، وَكَانَتِ الأَرْضُ حِينَ ظَهَرَ عَلَيْهَا، لِلَّهِ وَلِرَسُولِهِ ﷺ وَلِلْمُسْلِمِينَ، وَأَرَادَ إِخْرَاجَ الْيَهُودِ مِنْهَا، فَسَأَلَتِ الْيَهُودُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ لِيُقِرَّهُمْ بِهَا أَنْ يَكْفُوا عَمَلَهَا وَلَهُمْ نِصْفُ الثَّمَرِ، فَقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "نُقِرُّكُمْ بِهَا عَلَى ذَلِكَ مَا شِئْنَا."

# BÎRA MAÛNE
## XEFKA XAÎN YA DI RÊYA DEWETKERÊN ÎSLAMÊ DE HATÎ VEDAN

١٣٧٨- عَنْ عَاصِمٍ قَالَ: سَمِعْتُ أَنَسًا يَقُولُ: مَا رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَجَدَ عَلَى سَرِيَّةٍ مَا وَجَدَ عَلَى السَّبْعِينَ [الَّذِينَ] أُصِيبُوا يَوْمَ بِئْرِ مَعُونَةَ كَانُوا يُدْعَوْنَ الْقُرَّاءَ فَمَكَثَ شَهْرًا يَدْعُو عَلَى قَتَلَتِهِمْ.

# FETHA XEYBERÊ
## DERBEYA DAWÎ LI XAYÎNAN

**1375.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "Dema Resûlê Xwedê (s.) gihaşte Xeyberê wiha got: *'Dema em (bi niyeta herbê) dakevin cihê miletekî ku (di xusûsê sebebên herbê de) hatibûne şiyarkirin vêca sibiha (wê roja) wan çi xirab e!'"*

(M4667 Muslim, Cîhad we siyer, 122)



**1376.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) bi ehlê Xeyberê re herb kir. Me ew der bi herbê bi dest xist û êsîr hatine komkirin."

(D3009 Ebû Dawûd, Xerac, fey' we îmare, 23-24)



**1377.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin... ku dema Resûlê Xwedê (s.) pêşberê Cuhûyên Xeyberî de serkeft, xwest Cuhûyan jê derêxe. Lewra dema Resûlê Xwedê (s.) li Xeyberê serkeft, erdê Xeyberê bû milkê Xwedê, Resûlê Xwedê û Misilmanan. (ji ber vê yekê) Resûlê Xwedê xwest Cuhûyan jê derêxe. Li ser vê yekê Cuhûyan ji Resûlê Xwedê (s.) xwestin ku wan li Xeyberê bihêle û pêşber emareta bexçe û erdê Xeyberê nîvê fêkî ji wan re be. Resûlê Xwedê (s.) ji wan re got: *"Bi van şertan heta dema em dixwazin em we dihêlin tê de."*

(B2338 Buxarî, Muzara'a, 17)

# BÎRA MAÛNE
## XEFKA XAÎN YA DI RÊYA DEWETKERÊN ÎSLAMÊ DE HATÎ VEDAN

**1378.** 'Asim ji Enes (bin Malik) (r.) bihîstiye digot: "Min awayê ku Resûlê Xwedê (s.) li ser heftê sehabiyên ku Roja Bîra Maûne de şehit ketîn xemxarî li ser tu seriyeyên dîtir xemxarî nedîtiye. Ji wan re dihate gotin Qurra'. Vêca Resûlê Xwedê (s.) (ji ber xema wan) mehekî bêduayî li qatilê wan kir."

(M1550 Muslim, Mesacid we mewdi'iu's-salat, 302)

# PEYMANA HUDEYBIYEYÊ
## ZEFEREKA MEZIN YA BI AŞÎTIYÊ VE HATÎ

١٣٧٩- عَنِ الْمِسْوَرِ بْنِ مَخْرَمَة وَمَرْوَانَ –يُصَدِّقُ كُلُّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا حَدِيثَ صَاحِبِهِ– قَالاَ: ...فقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "مَا خَلأَتِ الْقَصْوَاءُ، وَمَا ذَاكَ لَهَا بِخُلُقٍ وَلَكِنْ حَبَسَهَا حَابِسُ الْفِيلِ"، ثُمَّ قَالَ: "وَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ لاَ يَسْأَلُونَنِى خُطَّةً يُعَظِّمُونَ فِيهَا حُرُمَاتِ اللَّهِ إِلاَّ أَعْطَيْتُهُمْ إِيَّاهَا..."



١٣٨٠- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: كُنَّا يَوْمَ الْحُدَيْبِيَةِ أَلْفًا وَأَرْبَعَمِائَةٍ، فَقَالَ لَنَا النَّبِيُّ ﷺ : "أَنْتُمُ الْيَوْمَ خَيْرُ أَهْلِ الأَرْضِ."



١٣٨١- عَنِ الْمِسْوَرِ بْنِ مَخْرَمَةَ وَ مَرْوَانَ –يُصَدِّقُ كُلُّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا حَدِيثَ صَاحِبِهِ– قَالاَ: ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّا لَمْ نَجِئْ لِقِتَالِ أَحَدٍ وَلَكِنَّا جِئْنَا مُعْتَمِرِينَ... فَإِنْ شَاءُوا مَادَدْتُهُمْ مُدَّةً... وَإِنْ هُمْ أَبَوْا فَوَالَّذِى نَفْسِى بِيَدِهِ لأُقَاتِلَنَّهُمْ عَلَى أَمْرِى هَذَا حَتَّى تَنْفَرِدَ سَالِفَتِى، وَلَيُنْفِذَنَّ اللَّهُ أَمْرَهُ."



# PEYMANA HUDEYBIYEYÊ
## ZEFEREKA MEZIN YA BI AŞÎTIYÊ VE HATÎ

**1379.** el-Miswer bin Mexzeme û Merwan (bin el-Hekem) gotina hevûdu tesdîq kirine û gotine: "... Dema Resûlê Xwedê berê xwe da Mekkeyê ji bo edakirina umrê, êdî dema gihîştin Hudeybiyê deveha Pêxember mexelî û nerabû. Vêca Mislimanan gotin Qeswa (navê deveha Pêxember e) herûmî bûye. Li ser vê yekê) Resûlê Xwedê (s.) got: *"Naxêr Qeswa neberiziye û berizandin ne edeta wê ye, belê ewên fîlên Ebrehe sekinandin, ew sekinandiye."* Dûv re got: *"Ez sond dixwim bi Wî yê ku nefsa min di destê wî de ye! Qureyşî çi tiştê ku pê te'zîma muqeddesatên Xwedê tê kirin ji min bixwazin ez ê ji wan re pêk bînim..."*"

(B2732 Buxarî, Şurût, 15)



**1380.** Cabir (bin Ebdillah) (r.) dibêje: "Em Roja Hudeybiyê hezar û çarsed kes bûn. Resûlê Xwedê (s.) bo me wiha got: *"Hûn îro xêrtirîn kesên li ser rûyê erdê (dijîn) ne."*

(M4811 Muslim, Îmare, 71)



**1381.** el-Miswer bin Mexzeme û Merwan (bin el-Hekem) gotina hevûdu tesdîq kirine û gotine: "(Dema Qureyşiyan niwênerê xwe Bedîl bin Werqa şiyande cem Pêxember (s.) û Bedîl jê pirsî ma hûn hatine çi?) Resûlê Xwedê (s.) wiha got: *"Em nehatine herbê bi kesekî re bikin, em tenê ji bo edakirina umrê hatine... Heke ku Qureyşî bixwazin ez ê mudetekê muhleta aşîtiyê bidime wan... Naxêr ger ku ev (aşîtî) qebûl nekirin (û herb xwestin), ez sond dixwim bi Wî yê ku nefsa min di destê wî de ye! Ez ê di rêya vî dînî de bi wan re şer bikim heta serê min ji bedena min veqetihe. Bêguman wê Xwedê emrê xwe pêk bîne."*"

(B2731 Buxarî, Şurût, 15)



١٣٨٢- عَنْ أَبِي وَائِلٍ قَالَ: ...فَجَاءَ عُمَرُ بْنُ الْخَطَّابِ فَأَتَى رَسُولَ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَلَسْنَا عَلَى حَقٍّ وَهُمْ عَلَى بَاطِلٍ؟ قَالَ: "بَلَى." قَالَ: أَلَيْسَ قَتْلاَنَا فِى الْجَنَّةِ وَقَتْلاَهُمْ فِى النَّارِ؟ قَالَ: "بَلَى." قَالَ: فَفِيمَ نُعْطِى الدَّنِيَّةَ فِى دِينِنَا وَنَرْجِعُ وَلَمَّا يَحْكُمِ اللَّهُ بَيْنَنَا وَبَيْنَهُمْ؟ فَقَالَ: "يَا ابْنَ الْخَطَّابِ إِنِّى رَسُولُ اللَّهِ وَلَنْ يُضَيِّعَنِى اللَّهُ أَبَدًا." قَالَ: فَنَزَلَ الْقُرْآنُ عَلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ بِالْفَتْحِ فَأَرْسَلَ إِلَى عُمَرَ فَأَقْرَأَهُ إِيَّاهُ فَقَالَ يَا رَسُولَ اللَّهِ أَوَفَتْحٌ هُوَ قَالَ "نَعَمْ." فَطَابَتْ نَفْسُهُ وَرَجَعَ.

# HERBA HUNEYNÊ Û MUHASEREKIRINA TAIFÊ

## DU HERBÊN TÊRDERS

١٣٨٣- عن أُمَيَّةَ بْنِ صَفْوَانَ بْنِ أُمَيَّةَ عَنْ أَبِيهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ اسْتَعَارَ مِنْهُ أَدْرُعًا يَوْمَ حُنَيْنٍ فَقَالَ: أَغَصْبٌ يَا مُحَمَّدُ فَقَالَ: "لاَ بَلْ عَارِيَةٌ مَضْمُونَةٌ."



**1382.** Ebû Waîl (r.) dibêje: "Piştî ku peymana Hudeybiyê hate girêdan) Umer bin el-Xettab (r.) hate cem Pêxember (s.) û got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma em ne li ser heqiyê ne û neyarên me ne di şaşiyê de ne?' Pêxember (s.) got: *'Belê.'* Hz. Umer cardin pirsî: 'Ma kuştiyên me ne di cennetê de ne û kuştiyên wan ne di agir de ne?' Pêxember (s.) got: *'Belê'* Hz. Umer got: 'Naxwe wî çaxî em çima di dînê xwe de xwe ji wan re nizm dikin û hê Xwedê di neqeba me û wan de hukum nekirî em çima dizivirin?' Pêxember (s.) jê re got: *'Ey Kurê Xettab! Ez Resûlê Xwedê me û bêşik ew destekdarê min e (min tucarî winda nake!)'* Piştî hingî Sûretê el-Feth nazilê ser Pêxember (s.) bû. Vêca Pêxember (s.) xeber şiyande ji Umer bin el-Xettab re û ev sûret jê re xwend. Êdî Umer got: 'Ma ev (aşîtî) feth e?' Got: *'Belê'* Piştî vê dilê Umer jî xweş bû û zivirî."

(M4633 Muslim, Cîhad we siyer, 94)

# HERBA HUNEYNÊ Û MUHASEREKIRINA TAIFÊ
## DU HERBÊN TÊRDERS

**1383.** Umeyye bin Sefwan bin Umeyye ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) di Herba Huneynê de ji Sefwan (ê ku hêj misilman nebûyî) miqdarek mertal bi ker xwest. Sefwan pirsî: "Ma tu yê ji min xesp bikî ya Muhemmed!" Rsûlê Xwedê (s.) got: "*Nexêr, bi ker û (heke zerer bigihe wan) bedêla wan wê were dayîn.*"

(D3562 Ebû Dawûd, Buyû' (Îcare), 88)



١٣٨٤- أَخْبَرَنِى أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ ...فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "فَإِنِّى أُعْطِى رِجَالاً حَدِيثِى عَهْدٍ بِكُفْرٍ أَتَأَلَّفُهُمْ أَفَلاَ تَرْضَوْنَ أَنْ يَذْهَبَ النَّاسُ بِالأَمْوَالِ وَتَرْجِعُونَ إِلَى رِحَالِكُمْ بِرَسُولِ اللَّهِ؟ فَوَاللَّهِ لَمَا تَنْقَلِبُونَ بِهِ خَيْرٌ مِمَّا يَنْقَلِبُونَ بِهِ."



١٣٨٥- عَنْ صُهَيْبٍ: أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَدْعُو أَيَّامَ حُنَيْنٍ: "اللَّهُمَّ بِكَ أُحَاوِلُ وَبِكَ أُصَاوِلُ وَبِكَ أُقَاتِلُ."



١٣٨٦- عَنْ أَبِى إِسْحَاقَ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى الْبَرَاءِ فَقَالَ: أَكُنْتُمْ وَلَّيْتُمْ يَوْمَ حُنَيْنٍ يَا أَبَا عُمَارَةَ؟ فَقَالَ: أَشْهَدُ عَلَى نَبِيِّ اللَّهِ ﷺ مَا وَلَّى وَلَكِنَّهُ انْطَلَقَ أَخِفَّاءُ مِنَ النَّاسِ وَحُسَّرٌ إِلَى هَذَا الْحَيِّ مِنْ هَوَازِنَ وَهُمْ قَوْمٌ رُمَاةٌ فَرَمَوْهُمْ بِرِشْقٍ مِنْ نَبْلٍ كَأَنَّهَا رِجْلٌ مِنْ جَرَادٍ فَانْكَشَفُوا فَأَقْبَلَ الْقَوْمُ إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَأَبُو سُفْيَانَ بْنُ الْحَارِثِ يَقُودُ بِهِ بَغْلَتَهُ فَنَزَلَ وَدَعَا وَاسْتَنْصَرَ وَهُوَ يَقُولُ: "أَنَا النَّبِيُّ لاَ كَذِبْ أَنَا ابْنُ عَبْدِ الْمُطَّلِبْ اللَّهُمَّ نَزِّلْ نَصْرَكَ.» قَالَ الْبَرَاءُ: كُنَّا وَاللَّهِ إِذَا احْمَرَّ الْبَأْسُ نَتَّقِى بِهِ وَإِنَّ الشُّجَاعَ مِنَّا لَلَّذِى يُحَاذِى بِهِ.



**1384.** Enes bin Malik (r.) rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) (li ser dilnexweşiya pêşber levakirina xenîmeta Herba Huneynê çêbûyî) gotiye: *"Ez ji bo dilê wan li Îslamê xweş bikim (malê xenîmetê) didim kesên nû misilmanbûyî. Ma hûn ne razî ne ku mirov bi mal vegerihin malê xwe û hûn bi Pêxember ve vegerihin malê xwe? Ez sond dixwim bi Xwedê! Ew (Pêxemberê) ku hûn bi wî ve divegerihin malê xwe, ji wî malê ku ew pê divegerihin malê xwe çêtir e."*

(M2436 Muslim, Zekat, 132)



**1385.** Ji Suheyb (bin Sînan) hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) di rojên Herba Huneynê de ev dua dikir: *"Xwedayê min! Bi alîkariya te ez pêşber (neyar) hewlê li xwe didim, bi alîkariya te ez hucûmê didim, bi alîkariya te ez şer dikim."*

(DM2471 Darimî, Siyer, 7)



**1386.** Ji Ebû Îshaq hatiye ragihandin ku zilamek hate cem el-Berra' û got: "Ey Ebû 'Umare! Ma hûn roja Herba Huneynê ji herbê revîbûn?" el-Berra' wiha bersiv da: "Ez şahid im ku Resûlê Xwedê (s.) nerevî. Belê, hinek eskerên (Misilman) bê çek û bê mertal berê xwe dan Hewaziniyan û bi ser wan de çûn. Vêca Hewazînî qewmek tîrvan bûn (di avêtina tîran de gelek mahir bûn) ew Misilman weke refê kulehan dane ber tîran. Di netîcê de ew hêz hezimî û neyar berê xwe da Resûlê Xwedê (s.). Ebû Sufyan bin el-Haris bi hefsarê hêstira Pêxember (s.) girtibû. Resûlê Xwedê (s.) ji hêstirê hate xwarê dua kir û daxwaza zeferê ji Xwedê xwest û got: *"Ez Pêxember im ne vir e. Ez kurê Ebdulmuttelib im. Xwedayê min! Alîkariya xwe bixe nesîbê min"* el-Berra' dibêje: "Wellahî, dema herb germ dibû me xwe bi Resûlê Xwedê (s.) diparast. Cesûrtirê me ew kes bû ku (di herbê de) li rex wî dima bû."

(M4616 Muslim, Cîhad we siyer, 79)



١٣٨٧- عَنِ ابْنِ شِهَابٍ قَالَ: وَزَعَمَ عُرْوَةُ أَنَّ مَرْوَانَ بْنَ الْحَكَمِ وَالْمِسْوَرَ بْنَ مَخْرَمَةَ أَخْبَرَاهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَامَ حِينَ جَاءَهُ وَفْدُ هَوَازِنَ مُسْلِمِينَ، فَسَأَلُوهُ أَنْ يَرُدَّ إِلَيْهِمْ أَمْوَالَهُمْ وَسَبْيَهُمْ ...فَقَامَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى الْمُسْلِمِينَ، فَأَثْنَى عَلَى اللَّهِ بِمَا هُوَ أَهْلُهُ ثُمَّ قَالَ: "أَمَّا بَعْدُ فَإِنَّ إِخْوَانَكُمْ هَؤُلاَءِ قَدْ جَاءُونَا تَائِبِينَ، وَإِنِّى قَدْ رَأَيْتُ أَنْ أَرُدَّ إِلَيْهِمْ سَبْيَهُمْ، فَمَنْ أَحَبَّ مِنْكُمْ أَنْ يُطَيِّبَ بِذَلِكَ فَلْيَفْعَلْ، وَمَنْ أَحَبَّ مِنْكُمْ أَنْ يَكُونَ عَلَى حَظِّهِ حَتَّى نُعْطِيَهُ إِيَّاهُ مِنْ أَوَّلِ مَا يُفِىءُ اللَّهُ عَلَيْنَا فَلْيَفْعَلْ."



١٣٨٨- عَنْ صَفْوَانَ بْنِ أُمَيَّةَ قَالَ: أَعْطَانِى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ حُنَيْنٍ وَإِنَّهُ لأَبْغَضُ الْخَلْقِ إِلَيَّ فَمَا زَالَ يُعْطِينِى حَتَّى إِنَّهُ لأَحَبُّ الْخَلْقِ إِلَيَّ.

# FETHA MEKKEYÊ
## FETHA DILAN

١٣٨٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِمَكَّةَ: "مَا أَطْيَبَكِ مِنْ بَلَدٍ وَأَحَبَّكِ إِلَيَّ وَلَوْلاَ أَنَّ قَوْمِى أَخْرَجُونِى مِنْكِ مَا سَكَنْتُ غَيْرَكِ."



**1387.** Ibn Şîhab gotiye: “Urwe, ji Merwan bin el-Hekem û ji el-Mîswer bin Mexreme rîwayet kiriye ku dema heyeta Hewaziniyan Misilmanbûyî hatin cem Pêxember (s.) û jê xwestin ku malê wan û êsîrên wan li wan bizivirîne, Resûlê Xwedê (s.) di nav Misilmanan de rabû şipiya û piştî hemd û pesnê Xwedê yê laîqê wî da wiha got: *“Bêguman ev birayên we tobe kirine û hatine cem me. Ez dixwazim ku zarok û jinên wan li wan vegerînin. Kesên ji we bixwazin ku zarok û jinên ketin para wan bêmuqabil li wan vegerînin bila vegerînin. Kesên bivên jî bila zarok û jinên li para wan ketiye, li wan vegerîne em ê ji bedêla wan ve ji xenîmeta ku em pêşîn bigirin bidinê.”*

(B2307 Buxarî, Wekalet, 7)



**1388.** Sefwan bin Umeyye gotiye: “Resûlê Xwedê (s.) Roja Huneynê (malê xenîmetê) da min. (Wî çaxî) mirovê ku zêde min jê nefret dikir ew bû. Belê ewî her mal li min zêde kir, êdî mirovê zêde ku min hez jê dikir ew bû.”

(T666 Tirmizî, Zekat, 30)

# FETHA MEKKEYÊ
## FETHA DILAN

**1389.** Ji Ibn Ebbas hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) di derheqê Mekkeyê de wiha gotiye: *“Tu çi bajarek şîrîn î û çiqasî ez ji te hez dikim!!! Ger gelê min ez ji te dernexistibûma, ez ji bil te li tu derê dîtir bi cih nedibûm.!”*

(T3926 Tirmizî, Menaqib, 68)



١٣٩٠- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَامَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ وَهُوَ عَلَى دَرَجِ الْكَعْبَةِ فَحَمِدَ اللَّهَ وَأَثْنَى عَلَيْهِ فَقَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى صَدَقَ وَعْدَهُ وَنَصَرَ عَبْدَهُ وَهَزَمَ الأَحْزَابَ وَحْدَهُ."



١٣٩١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ: "إِنَّ هَذَا الْبَلَدَ حَرَامٌ حَرَّمَهُ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ لَمْ يَحِلَّ فِيهِ الْقِتَالُ لأَحَدٍ قَبْلِى وَأُحِلَّ لِى سَاعَةً مِنْ نَهَارٍ فَهُوَ حَرَامٌ بِحُرْمَةِ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ.



١٣٩٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ هِجْرَةَ بَعْدَ الْفَتْحِ وَلَكِنْ جِهَادٌ وَنِيَّةٌ وَإِذَا اسْتُنْفِرْتُمْ فَانْفِرُوا."

# MÛTE
## LEŞKEREK JI MUCAHIDÊN AŞÎTÎXWAZ

١٣٩٣- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لَغَدْوَةٌ فِي سَبِيلِ اللَّهِ أَوْ رَوْحَةٌ خَيْرٌ مِنَ الدُّنْيَا وَمَا فِيهَا."



**1390.** Ibn Umer (r.) ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) roja Fetha Mekkeyê rabû û li ser derincên Ke'beyê sekinî û hemdê Xwedê kir û pesnê layîqê wî da û got: *"Hemd ji wî Xedayî re be ku we'da xwe pêk anî. Ebdê xwe muzeffer kir û bi tenê partiyên kufrê hezimandin."*

(İM2628 Ibn Maceh, Diyat, 5)



**1391.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) roja fetha Mekkeyê de gotiye: *"Bêguman ev bajar, bajareke pîroz e. Xwedê Ezze we Celle ew heram kiriye (ku tê de kuştin çêbe). Herbkirina di vî bajarî de berî min ji tu kesî re helal nebûye, ji min re jî tenê di wextekî rojê de helal bûye. Vêca ev bajar bi emrê Xwedê bi herambûna wê heram bûye."*

(N2878 Nesaî, Menasiku'l-hec, 111)



**1392.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Piştî fethê (fetha Mekkeyê) êdî hîcret nîn e. Belê cîhad û niyet hey e. Dema bangê we bo cîhadê hate kirin, bi lez beşdar bibin."*

(B2783 Buxarî, Cîhad, 1)

# MÛTE
## LEŞKEREK JI MUCAHIDÊN AŞÎTÎXWAZ

**1393.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di wextê sibihê an jî di wextê êvarê de derketina seferekî di rêya Xwedê de, ji dinyayê û ji tiştên tê de (hemiyan) xêrtir e."*

(B2792 Buxarî, Cîhad, 5)



١٣٩٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﵁ قَالَ: خَطَبَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَقَالَ: "أَخَذَ الرَّايَةَ زَيْدٌ فَأُصِيبَ، ثُمَّ أَخَذَهَا جَعْفَرٌ فَأُصِيبَ، ثُمَّ أَخَذَهَا عَبْدُ اللَّهِ بْنُ رَوَاحَةَ فَأُصِيبَ، ثُمَّ أَخَذَهَا خَالِدُ بْنُ الْوَلِيدِ عَنْ غَيْرِ إِمْرَةٍ فَفُتِحَ عَلَيْهِ، وَمَا يَسُرُّنِى –أَوْ قَالَ: مَا يَسُرُّهُمْ– أَنَّهُمْ عِنْدَنَا." وَقَالَ وَإِنَّ عَيْنَيْهِ لَتَذْرِفَانِ.

# HECCA XATIRXWESTINÊ
## HECCA PÊXEMBER

١٣٩٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ ﵄ أَنَّ تَلْبِيَةَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ : "لَبَّيْكَ اللَّهُمَّ لَبَّيْكَ! لَبَّيْكَ لاَ شَرِيكَ لَكَ لَبَّيْكَ. إِنَّ الْحَمْدَ وَالنِّعْمَةَ لَكَ وَالْمُلْكَ، لاَ شَرِيكَ لَكَ."



١٣٩٦- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى بَكْرَةَ، عَنْ أَبِيهِ: ذَكَرَ النَّبِيَّ ﷺ قَعَدَ عَلَى بَعِيرِهِ وَأَمْسَكَ إِنْسَانٌ بِخِطَامِهِ... قَالَ: "فَإِنَّ دِمَاءَكُمْ وَأَمْوَالَكُمْ وَأَعْرَاضَكُمْ بَيْنَكُمْ حَرَامٌ كَحُرْمَةِ يَوْمِكُمْ هَذَا، فِى شَهْرِكُمْ هَذَا، فِى بَلَدِكُمْ هَذَا..."



**1394.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) xutbeyek xwend û got: *"Zeyd ala hilgirt, hate kuştin. Dûv re, Cafer ala hilgirt, ew jî hate kuştin. Dûv re, Ebdullah ala hilgirt, ew jî hate kuştin. Dûv re Xalid bin el-Welîd bêyî ku bi ser leşkerî hatibe te'yînkirin ala hilgirt, Xwedê li ser destê wî zefer da wan. Heke ew niha li cem me bûna ez hevqasî keyfxweş nedibûm an jî got: Heke ew niha li cem me bûna biqasî ku niha (li cihê xwe) keyfxweş in keyfxweş nedibûn." Û ji çavên wî hestir diherikîn."*

(B3063 Buxarî, Cîhad, 183)

# HECCA XATIRXWESTINÊ
## HECCA PÊXEMBER

**1395.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku (di heccê de) telbiya Resûlê Xwedê (s.) wiha bû: *"Lebbeyke Ellahumme lebbeyk! Lebbeyke la şerîke leke lebbeyk! Înne'l-hemde we'n-ni'mete leke we'l-mulk. Lâ şerîke lek. (Kerem ke Xwedayê min kerem ke! Ez di emrê te de me kerem ke! Tu şirîkê te nîn in. Xwedayê min! Kerem ke! Hemd tenê ji te re ye. Nî'met jî yê te ye milk jî yê te ye. Tu şirîk ji te re nîn in.)"*

(M2811 Muslim, Hec, 19)



**1396.** Ebdurrehman bin Ebî Bekre (r.) ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) (di Heccetu'l-Weda'ê de) li ser deveha xwe rûnişt û mirovekî jî hevsarê wê girtibû... Piştre Resûlê xwedê (s.) got: *"(Gelî mirovan!) Bêguman xwîna we, malê we û namûsa we ji we re heram e, û xwîn û mal û namûsa we mîna muqeddesiya vê rojê û vê mehê û vî bajarî muqeddes e..."*

(B67 Buxarî, Ilim, 9; M4384 Muslim, Qesame, 30)



١٣٩٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ غَدَاةَ الْعَقَبَةِ وَهُوَ عَلَى نَاقَتِهِ: "الْقُطْ لِى حَصًى." فَلَقَطْتُ لَهُ سَبْعَ حَصَيَاتٍ هُنَّ حَصَى الْخَذْفِ. فَجَعَلَ يَنْفُضُهُنَّ فِى كَفِّهِ وَيَقُولُ: "أَمْثَالَ هَؤُلاَءِ فَارْمُوا." ثُمَّ قَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! إِيَّاكُمْ وَالْغُلُوَّ فِى الدِّينِ فَإِنَّمَا أَهْلَكَ مَنْ كَانَ قَبْلَكُمُ الْغُلُوُّ فِى الدِّينِ."



١٣٩٨- عَنِ ابْنِ جُرَيْجٍ: أَخْبَرَنِى أَبُو الزُّبَيْرِ أَنَّهُ سَمِعَ جَابِرًا يَقُولُ: رَأَيْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَرْمِى عَلَى رَاحِلَتِهِ يَوْمَ النَّحْرِ وَيَقُولُ: "لِتَأْخُذُوا مَنَاسِكَكُمْ فَإِنِّى لاَ أَدْرِى لَعَلِّى لاَ أَحُجُّ بَعْدَ حَجَّتِى هَذِهِ."

# MÎRATA HZ. PÊXEMBER Û WESÎYETA WÎ

١٣٩٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ نُورَثُ مَا تَرَكْنَا صَدَقَةٌ."



١٤٠٠- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: مَا تَرَكَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ دِينَارًا وَلاَ دِرْهَمًا وَلاَ شَاةً وَلاَ بَعِيرًا وَلاَ أَوْصَى بِشَيْءٍ.



**1397.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye rîwayet kirin ku Resûlê Xwedê (s.) di sibiha Eqebê de (Sibiha roja yekem ya Eyda Qurbanê ya ku tê de kevir têne avêtin) dema ku li ser pişta deveha xwe bû got: *"Ji min re hinek kevir bide hev."* Min jê re heft zîxurên ku karibe bi tiliyên xwe bavêje kom kirin. Vêca ew zîxur di kefa destê xwe de birin û anîn û got: *'Hûn (jî) weke van zîxuran bavêjin'* Piştre jî got: *'Gelî mirovan! Xwe ji zêdegaviya di dîn de dûr bikin. Bêguman zêdegaviya di dîn de, qewmên beriya hewe helak kir.'"*

(ÎM3029 Ibn Maceh, Menasik, 63; N3059 Nesaî, Menasiku'l-hec, 217)



**1398.** Ji Ibn Cureyc hatiye ragihandin ku Ebu'z-Zubeyr ji Cabir bihîstiye digot: "Min roja Eyda Qurbanê Resûlê Xwedê (s.) dît li ser suwariya xwe şeytan recm dikir û digot: *"Şiklê kirina îbadeta heccê ji min hîn bibin. Ez nizanim, dibe ku piştî vê heccê ez carek dî hec nekim…"*

(M3137 Muslim, Hec, 310; D1970 Ebû Dawûd, Menasik, 77)

# MÎRATA HZ. PÊXEMBER Û WESÎYETA WÎ

**1399.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Em (pêxember) li pey xwe mîrasê nahêlin. Tişta me hiştî sedeqe ye."*

(M4585 Muslim, Cihad we siyer, 56)



**1400.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) piştî mirina xwe ne dînarek, ne dîrhemek, ne mihek û ne jî devehek hiştiye. Ewî wesiyeta tiştekî jî nekiriye."

(M4229 Muslim, Wasiyye, 18; N3651 Nesaî, Wesaya, 2)



١٤٠١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﵁ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ يَقْتَسِمْ وَرَثَتِي دِينَارًا، مَا تَرَكْتُ بَعْدَ نَفَقَةِ نِسَائِي وَمَئُونَةِ عَامِلِي فَهْوَ صَدَقَةٌ."



١٤٠٢- عَنْ قَيْسِ بْنِ كَثِيرٍ قَالَ: قَدِمَ رَجُلٌ مِنَ الْمَدِينَةِ عَلَى أَبِي الدَّرْدَاءِ وَهُوَ بِدِمَشْقَ فَقَالَ: مَا أَقْدَمَكَ يَا أَخِي؟ فَقَالَ: حَدِيثٌ بَلَغَنِي أَنَّكَ تُحَدِّثُهُ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ... قَالَ: فَإِنِّي سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "...إِنَّ الْعُلَمَاءَ وَرَثَةُ الأَنْبِيَاءِ إِنَّ الأَنْبِيَاءَ لَمْ يُوَرِّثُوا دِينَارًا وَلاَ دِرْهَمًا إِنَّمَا وَرَّثُوا الْعِلْمَ فَمَنْ أَخَذَ بِهِ فَقَدْ أَخَذَ بِحَظٍّ وَافِرٍ."



١٤٠٣- حَدَّثَنَا طَلْحَةُ بْنُ مُصَرِّفٍ قَالَ سَأَلْتُ عَبْدَ اللَّهِ بْنَ أَبِي أَوْفَى ﵁ هَلْ كَانَ النَّبِيُّ ﷺ أَوْصَى؟ فَقَالَ لاَ. فَقُلْتُ: كَيْفَ كُتِبَ عَلَى النَّاسِ الْوَصِيَّةُ أَوْ أُمِرُوا بِالْوَصِيَّةِ؟ قَالَ: أَوْصَى بِكِتَابِ اللَّهِ.

# WEFATA HZ. PÊXEMBER
## GIHATINA REFÎQÊ E'LA

١٤٠٤- عَنْ أَنَسٍ ﵁ قَالَ: لَمَّا ثَقُلَ النَّبِيُّ ﷺ جَعَلَ يَتَغَشَّاهُ، فَقَالَتْ فَاطِمَةُ عَلَيْهَا السَّلاَمُ: وَا كَرْبَ أَبَاهُ! فَقَالَ: "لَيْسَ عَلَى أَبِيكِ كَرْبٌ بَعْدَ الْيَوْمِ."



**1401.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila wêrisên min dînarek tenê jî leva nekin. Piştî nefeqê xanimên min û îhtiyaciyên xizmetkarê min tişta mayî sedeqe ye."*

(B2776 Buxarî, Wesaya, 32)



**1402.** Qeys bin Kesîr (r.) dibêje: "Zilamek ji Medînê hate cem Ebu'd-Derda (r.) wexta li Dimeşqê bû. Ebu'd-Derda jê pirsî: 'Birayê min tu bo çi hatî vir?' Got: 'Hedîseka ku tu ji Pêxember (s.) neqil dike (ez anime vir)'... Ebu'd-Derda (r.) got: 'Min bihîst Resûlê Xwedê (s.) digot: '... *Bêguman alim warisê pêxemberan e. Pêxemberan ne dînar û ne jî dirhem tu tişt mîras nehiştine, ewan tenê ilm mîras hiştine. Vêca kesê ilm girtibe bêguman ewî parekî zehf bi dest xistiye.*'"

(T2682 Tirmizî, Ilim, 19)



**1403.** Telhe bin Muserrif gotiye: "Min ji Ebdullah bin Ebî Ewfa (r.) pirsî 'Ma Resûlê Xwedê (s.) wesiyet kiriye?' Ewî got: 'Nexêr' Min got: 'Nexwe wesiyet çewa li ser mirovan ferz bûye an jî çewa emrê wan bi wesiyetê hatiye kirin?' Ewî got: '(Resûlê Xwedê) wesiyeta (li peyçûna) Kitêba Xwedê kiriye.'"

(B2740 Buxarî, Wesaya, 1)

# WEFATA HZ. PÊXEMBER
## GIHATINA REFÎQÊ E'LA

**1404.** Enes (r.) gotiye: "Dema nexweşiya Resûlê Xwedê (s.) lê giran bû, bêhiş ket. Vêca Hz. Fatîme (r.) got: 'Aaax yabo!' Li ser vê yekê Pêxember (s.) got: *'Ji îro pê de êdî axîn ji bavê te re tune ye.'*"

(B4462 Buxarî, Mexazî, 84)



١٤٠٥- أَنَّ عَائِشَةَ g كَانَتْ تَقُولُ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ s كَانَ بَيْنَ يَدَيْهِ رَكْوَةٌ –أَوْ عُلْبَةٌ فِيهَا مَاءٌ، شَكَّ عُمَرُ– فَجَعَلَ يُدْخِلُ يَدَهُ فِى الْمَاءِ فَيَمْسَحُ بِهَا وَجْهَهُ وَيَقُولُ: "لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ، إِنَّ لِلْمَوْتِ سَكَرَاتٍ." ثُمَّ نَصَبَ يَدَهُ فَجَعَلَ يَقُولُ: "فِى الرَّفِيقِ الأَعْلَى"، حَتَّى قُبِضَ وَمَالَتْ يَدُهُ.



١٤٠٦- عَنْ ابنِ عَبَّاسٍ: ...فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: أَمَّا بَعْدُ، مَنْ كَانَ مِنْكُمْ يَعْبُدُ مُحَمَّدًا ﷺ فَإِنَّ مُحَمَّدًا قَدْ مَاتَ، وَمَنْ كَانَ مِنْكُمْ يَعْبُدُ اللَّهَ فَإِنَّ اللَّهَ حَيٌّ لاَ يَمُوتُ...



١٤٠٧- عَنْ مَالِكٍ أَنَّهُ بَلَغَهُ أَنَّ أُمَّ سَلَمَةَ زَوْجَ النَّبِيِّ ﷺ كَانَتْ تَقُولُ: مَا صَدَّقْتُ بِمَوْتِ النَّبِيِّ ﷺ حَتَّى سَمِعْتُ وَقْعَ الْكَرَازِينِ.



١٤٠٨- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: لَمَّا كَانَ الْيَوْمُ الَّذِى دَخَلَ فِيهِ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْمَدِينَةَ أَضَاءَ مِنْهَا كُلُّ شَيْءٍ، فَلَمَّا كَانَ الْيَوْمُ الَّذِى مَاتَ فِيهِ أَظْلَمَ مِنْهَا كُلُّ شَيْءٍ، وَمَا نَفَضْنَا عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ الأَيْدِى وَإِنَّا لَفِى دَفْنِهِ حَتَّى أَنْكَرْنَا قُلُوبَنَا.

# PÊXEMBERÊN SIXTE
## SIXTEKARÊN XWE LI PÊXEMBERTIYÊ QEWIMANDIN

١٤٠٩- عَنْ ثَوْبَانَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "... وَإِنَّهُ سَيَكُونُ فِى أُمَّتِى ثَلاَثُونَ كَذَّابُونَ كُلُّهُمْ يَزْعُمُ أَنَّهُ نَبِيٌّ وَأَنَا خَاتَمُ النَّبِيِّينَ لاَ نَبِيَّ بَعْدِى."



**1405.** Hz. Aîşe (r.) wiha digot: "(Di nexweşiya ku Resûlê Xwedê (s.) pê mirî de) li ber wî firaxek ji çerm an jî ji dar tije av hebû. Vêca destê xwe lê dihilanî û dûv re bi rûyê xwe ve dibir û digot: *'La îlahe îllellah, bêşik sekeratên mirinê hene.'* Û dûv re destên xwe hilda û heta ku rihê xwe teslîm kir û destê wî ket digot: *"Fî'r-Refîqî 'l-e'la/Digihime Dostê herî Bilind"*

(B6510 Buxarî, Riqaq, 42)



**1406.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Ebû Bekir (r.) (piştî wefata Pêxember (s.) axaftinek kir û) got: "Zanibin, kesê ji we ji Muhemmed re îbadet dike va ye Muhemmed miriye û kesê ji Xweda re îbadet dike Xweda sax e, namire..."

(B4454 Buxarî, Mexazî, 84)



**1407.** Malik (bin Enes) (r.) ji xanima Pêxember (s.) Ummu Seleme (r.) neql kiriye ku digot: "Heta min dengê tevir (û bêrika) nekir min bawerî bi mirina Resûlê Xwedê (s.) neanî."

(MU551 Muwatta', Cena'iz, 10)



**1408.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Roja ku Resûlê Xwedê (s.) kete Medînê çi tişta di Medînê de heyî ronî bû. Roja ku li Medînê wefat kirî her tişt tarî bû. Hê em bi veşartina wî ve meşxûl bûn û hê me destê xwe ji ser nerakirî (wilo çêbû) êdî me dilê xwe nas nedikir!"

(T3618 Tirmizî, Menaqib, 1; İM1631 Ibn Maceh, Cena'iz, 65)

# PÊXEMBERÊN SIXTE
## SIXTEKARÊN XWE LI PÊXEMBERTIYÊ QEWIMANDIN

**1409.** Ji Sewban (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Bêguman wê ji ummeta min sih derewkerên ku iddîa pêxembertiyê dikin derkevin. Hal weku ye ez dawiya pêxemberan im û tu pêxember piştî min nîn in."*

(T2219 Tirmizî, Fiten, 43)



١٤١٠- قَالَ ابْنُ عَبَّاسٍ: فَسَأَلْتُ عَنْ قَوْلِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّكَ أُرَى الَّذِى أُرِيتُ فِيهِ مَا أُرِيتُ"، فَأَخْبَرَنِى أَبُو هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "بَيْنَا أَنَا نَائِمٌ رَأَيْتُ فِى يَدَيَّ سِوَارَيْنِ مِنْ ذَهَبٍ فَأَهَمَّنِى شَأْنُهُمَا، فَأُوحِيَ إِلَيَّ فِى الْمَنَامِ أَنِ انْفُخْهُمَا، فَنَفَخْتُهُمَا فَطَارَا، فَأَوَّلْتُهُمَا كَذَّابَيْنِ يَخْرُجَانِ بَعْدِى، أَحَدُهُمَا الْعَنْسِيُّ، وَالآخَرُ مُسَيْلِمَةُ."



١٤١١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: وَقَفَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَى مُسَيْلِمَةَ فِى أَصْحَابِهِ فَقَالَ: "لَوْ سَأَلْتَنِى هَذِهِ الْقِطْعَةَ مَا أَعْطَيْتُكَهَا، وَلَنْ تَعْدُوَ أَمْرَ اللَّهِ فِيكَ، وَلَئِنْ أَدْبَرْتَ لَيَعْقِرَنَّكَ اللَّهُ."



١٤١٢- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ : أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ مَثَلِي وَمَثَلَ الْأَنْبِيَاءِ مِنْ قَبْلِي كَمَثَلِ رَجُلٍ بَنَى بَيْتًا فَأَحْسَنَهُ وَأَجْمَلَهُ إِلَّا مَوْضِعَ لَبِنَةٍ مِنْ زَاوِيَةٍ فَجَعَلَ النَّاسُ يَطُوفُونَ بِهِ وَيَعْجَبُونَ لَهُ وَيَقُولُونَ: هَلَّا وُضِعَتْ هَذِهِ اللَّبِنَةُ؟ قَالَ: فَأَنَا اللَّبِنَةُ، وَأَنَا خَاتِمُ النَّبِيِّينَ."

**1410.** Ibn Ebbas (r.) dibêje: "Min pirsa vê gotina ku Resûlê Xwedê (s.) (ji Museyleme re) gotî kir: *'Bêguman tu ew kes î ku di xewnê de nîşa min hatî kirin.'* Li ser vê yekê Ebû Hureyre (r.) ji min re got: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Wextekî ez di xewê de bûm min di destê xwe de du bazinên zêr didît. Min ew her du bazin mereq kirin. Piştre di xewnê de ji min re hate gotin ku pif bike wan. Min jî pif kire wan, di cih de ji destê min firîn û çûn. Vêca min ew tewîl kir ku wê piştî min du pêxemberên sixte derkevin: Yek ji wan el-Ensî ye, yê dîtir Museyleme ye.'"*

(B4374 Buxarî, Mexazî, 71)



**1411.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin (dema Muselemetu'l-kezzab bi heyeteka xwe ve hate Medînê bo ziyareta Pêxember (s.) û ji Resûlê Xwedê (s.) re got: "Heke tu piştî xwe min xelîfe teyîn bikî ez ê baweriyê bi dînê te bînim") Resûlê Xwedê (s.) di pêşber Museylemeyê di nav hevalê xwe de rûniştî de sekinî û (çiqilekî dara xurmê yê di destê xwe nişan da) wiha got: *"Heke tu vî çiqilî ji min bixwazî ez wî jî nadime te. Tu ji emrê Xwedê yê di derheqê te de dayî derbas nabe. Heke tu pişta xwe bidî (dînê Xwedê) mitleqa wê Xwedê te helak bike."*

(B7461 Buxarî, Tewhîd, 29)



**1412.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mesela min û mesela pêxemberên beriya min, weke mesela zilamekî ku xaniyek gelek xweşik û bêqusûr ava kiriye, belê cihê kerpîçekî hiştiye vale. Vêca mirovan jî bi heyranî û bi dilçûyînê li derdora wî xaniyî re diçûn û dihatin. (Dema ew cihê vale didîtin) digotin: 'Ma çima cihê vî kerpîçî jî ne hatiye dagirtin?'* Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ez ew kerpîç im û ez pêxemberê dawî me.'"*

(B3535 Buxarî, Menaqib, 18)

# HZ. PÊXEMBER Û RÊVEBERÎ
## EMANET, EHLIYET, HEQQANIYET

١٤١٣- عَنْ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَسْمُرُ مَعَ أَبِى بَكْرٍ فِى الأَمْرِ مِنْ أَمْرِ الْمُسْلِمِينَ وَأَنَا مَعَهُمَا.



١٤١٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: مَا رَأَيْتُ أَحَدًا أَكْثَرَ مَشُورَةً لأَصْحَابِهِ مِنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ .



١٤١٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "عَلَى الْمَرْءِ الْمُسْلِمِ السَّمْعُ وَالطَّاعَةُ فِيمَا أَحَبَّ وَكَرِهَ إِلاَّ أَنْ يُؤْمَرَ بِمَعْصِيَةٍ فَإِنْ أُمِرَ بِمَعْصِيَةٍ فَلاَ سَمْعَ وَلاَ طَاعَةَ."



١٤١٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّمَا الإِمَامُ جُنَّةٌ يُقَاتَلُ مِنْ وَرَائِهِ وَيُتَّقَى بِهِ فَإِنْ أَمَرَ بِتَقْوَى اللَّهِ [عَزَّ وَجَلَّ] وَعَدَلَ كَانَ لَهُ بِذَلِكَ أَجْرٌ وَإِنْ يَأْمُرْ بِغَيْرِهِ كَانَ عَلَيْهِ مِنْهُ."



١٤١٧- أَنَّ عُبَيْدَ اللَّهِ بْنَ زِيَادٍ عَادَ مَعْقِلَ بْنَ يَسَارٍ فِى مَرَضِهِ فَقَالَ لَهُ مَعْقِلٌ... سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَا مِنْ أَمِيرٍ يَلِى أَمْرَ الْمُسْلِمِينَ ثُمَّ لاَ يَجْهَدُ لَهُمْ وَيَنْصَحُ إِلاَّ لَمْ يَدْخُلْ مَعَهُمُ الْجَنَّةَ."



# HZ. PÊXEMBER Û RÊVEBERÎ
## EMANET, EHLIYET, HEQQANIYET

**1413.** Hz. Umer bin el-Xettab (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) bi şev digel Ebû Bekir di derbarê meselê Misilmanan de diaxivîn û ez jî digel wan bûm."

(T169 Tirmizî, Salat, 12)



**1414.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Min kesek ji Resûlê Xwedê (s.) zêdetir bi eshabê xwe re dişêwire neditiye."

(T1714 Tirmizî, Cîhad, 35)



**1415.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Lazim e kesê Misilman di karê jê razî û ne razî de (her halukarî de) guh bidêre (rêvebirê xwe) û îtaeta wî bike. Belê tişta tê de bêemriya Xwedê hebe ew ji der e. Heke emrê wî hate kirin bi bêemriya Xwedê wî çaxî ne lê guhdar dike û ne jî îtaeta wî dike."*

(M4763 Muslim, Îmare, 38)



**1416.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Reîsê dewletê mertal e. Herb (mucadela parastinê) li pişwî tê kirin û bi wî (dewlet) tê parastin. Heke emrê bi teqwatiya Xwedê Ezze we Celle bike bi edalet hukm bike, pêşberê vê de jê re xêr heye. Heke eksê vê bike jê re webalê emelê wî heye."*

(M4772 Muslim, Îmare, 43)



**1417.** Ubeydullah bin Ziyad, di nexweşiya wî de çû serdaniya Me'qil bin Yesar. Vêca Me'qil jê re got: "... Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Ew emîrê ku rêveberiya karê Misilmanan girtibe ser xwe, belê ji bo wan xebat neke û ji wan re ne semîmî û durust be, ew bi Misilmanan re naçe cennetê.'*"

(M366 Muslim, Îman, 229)



١٤١٨- عَنْ يَحْيَى بْنِ حُصَيْنٍ قَالَ: سَمِعْتُ جَدَّتِي تُحَدِّثُ أَنَّهَا سَمِعَتِ النَّبِيَّ ﷺ يَخْطُبُ فِي حَجَّةِ الْوَدَاعِ وَهُوَ يَقُولُ: "وَلَوِ اسْتُعْمِلَ عَلَيْكُمْ عَبْدٌ يَقُودُكُمْ بِكِتَابِ اللَّهِ فَاسْمَعُوا لَهُ وَأَطِيعُوا."

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE QEBÎLÊN EREB

١٤١٩- عَنْ وَاثِلَةَ بْنِ الأَسْقَعِ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ اصْطَفَى مِنْ وَلَدِ إِبْرَاهِيمَ إِسْمَاعِيلَ وَاصْطَفَى مِنْ وَلَدِ إِسْمَاعِيلَ بَنِي كِنَانَةَ وَاصْطَفَى مِنْ بَنِي كِنَانَةَ قُرَيْشًا وَاصْطَفَى مِنْ قُرَيْشٍ بَنِي هَاشِمٍ وَاصْطَفَانِي مِنْ بَنِي هَاشِمٍ."



١٤٢٠- عَنْ أَبِي حُمَيْدٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ خَيْرَ دُورِ الأَنْصَارِ دَارُ بَنِي النَّجَّارِ، ثُمَّ عَبْدِ الأَشْهَلِ، ثُمَّ دَارُ بَنِي الْحَارِثِ، ثُمَّ بَنِي سَاعِدَةَ، وَفِي كُلِّ دُورِ الأَنْصَارِ خَيْرٌ."



١٤٢١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "قُرَيْشٌ وَالأَنْصَارُ وَجُهَيْنَةُ وَمُزَيْنَةُ وَأَسْلَمُ وَأَشْجَعُ وَغِفَارُ مَوَالِيَّ لَيْسَ لَهُمْ مَوْلًى، دُونَ اللَّهِ وَرَسُولِهِ."



**1418.** Yehya bin Husayn gotiye: "Min ji pîrka xwe bihîst digot: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst di xutba Heccetu'l-Weda'ê de digot: *"Heke kesê ku rêvebiriya we bi kitêba Xwedê bike koleyek jî be, guh bidinê û îtaiya wî bikin."*

(M4758 Muslim, Îmare, 37)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE QEBÎLÊN EREB

**1419.** Ji Wasîle bin el-Esqa' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê ji zarokên Îbrahîm Îsmaîl bijart. Ji zarokên Îsmaîl Benû Kînane bijartin, ji Benû Kînane Qureyşî bijart, ji Qureyşiyan Haşimî bijart û ji Haşimiyan jî ez bijartim."*

(T3605 Tirmizî, Menaqib, 1)



**1420.** Ji Ebû Humeyd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman xêrtirê qebîlên Ensariyan, (ji ber ku pêşî misilman bûbûn û xizmeta wan zêde ji Îslamê re çêbûye) Neccarî ne. Piştre Ebduleşhelî ne, piştî wan Harisî ne, piştre jî Sa'idî ne. Di qebîlên Ensariyan tevan de xêr heye."*

(B3791 Buxarî, Menaqibu'l-ensar, 7)



**1421.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qureyş, Ensar, Cuheyne, Muzeyne, Eslem, Eşce' û Xîfar dost û alîkerên min in. Xwedê û Resûlê wî jî dost û alîkerê wan in."*

(B3504 Buxarî, Menaqib, 2; M6439 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 189)



١٤٢٢- قَالَ أَبُو ذَرٍّ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "غِفَارُ غَفَرَ اللَّهُ لَهَا وَأَسْلَمُ سَالَمَهَا اللَّهُ."



١٤٢٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَطَبَ النَّاسَ يَوْمَ فَتْحِ مَكَّةَ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَذْهَبَ عَنْكُمْ عُبِّيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ وَتَعَاظُمَهَا بِآبَائِهَا فَالنَّاسُ رَجُلاَنِ: رَجُلٌ بَرٌّ تَقِيٌّ كَرِيمٌ عَلَى اللَّهِ وَفَاجِرٌ شَقِيٌّ هَيِّنٌ عَلَى اللَّهِ وَالنَّاسُ بَنُو آدَمَ وَخَلَقَ اللَّهُ آدَمَ مِنْ تُرَابٍ..."

## DI DEWRA PÊXEMBER DE AWAYÊ CIVAKÎ

١٤٢٤- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "أَتَاكُمْ أَهْلُ الْيَمَنِ هُمْ أَرَقُّ أَفْئِدَةً وَأَلْيَنُ قُلُوبًا، الإِيمَانُ يَمَانٍ وَالْحِكْمَةُ يَمَانِيَةٌ، وَالْفَخْرُ وَالْخُيَلاَءُ فِي أَصْحَابِ الإِبِلِ، وَالسَّكِينَةُ وَالْوَقَارُ فِي أَهْلِ الْغَنَمِ."



١٤٢٥- عَنِ الْمَعْرُورِ قَالَ: لَقِيتُ أَبَا ذَرٍّ بِالرَّبَذَةِ وَعَلَيْهِ حُلَّةٌ وَعَلَى غُلاَمِهِ حُلَّةٌ فَسَأَلْتُهُ عَنْ ذَلِكَ. فَقَالَ: إِنِّي سَابَبْتُ رَجُلاً فَعَيَّرْتُهُ بِأُمِّهِ، فَقَالَ لِيَ النَّبِيُّ ﷺ : "يَا أَبَا ذَرٍّ! أَعَيَّرْتَهُ بِأُمِّهِ؟ إِنَّكَ امْرُؤٌ فِيكَ جَاهِلِيَّةٌ، إِخْوَانُكُمْ خَوَلُكُمْ جَعَلَهُمُ اللَّهُ تَحْتَ أَيْدِيكُمْ، فَمَنْ كَانَ أَخُوهُ تَحْتَ يَدِهِ فَلْيُطْعِمْهُ مِمَّا يَأْكُلُ، وَلْيُلْبِسْهُ مِمَّا يَلْبَسُ، وَلاَ تُكَلِّفُوهُمْ مَا يَغْلِبُهُمْ، فَإِنْ كَلَّفْتُمُوهُمْ فَأَعِينُوهُمْ."



**1422.** Ji Ebû Zerr (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xîfar! Xwedê wan mexfîret bike. Eslem! Xwedê silemetiyê bide wan."*



(M6429 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 182)

**1423.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) Roja Fetha Mekkeyê xutbeyek xwend û got: *"Gelî mirovan! Bê guman Xwedê xurûra Cahiliyetê û pesindana bi bav û kalan ji nav we rakir, vêca mirov du gurûb in: qencê mutteqî yê li cem Xwedê biqedir û gunehkarê rûreş ê li cem Xwedê bêqîmet. Mirov zarokên Adem in û Xwedê Adem ji axê çêkiri ye..."*

(T3270 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 49)

# DI DEWRA PÊXEMBER DE AWAYÊ CIVAKÎ

**1424.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Yemenî hatine cem we. Ew dilnaziktirîn û dilnermtirînê mirovan in. Îman ji Yemenê ye û hîkmet jî Yemenî ye. Fexr û kubarî li cem Bedewiyên xudan deveh (tê dîtin). Sukûnet û weqar jî digel xudanê mihan (tê dîtin.)"*

(B4388 Buxarî, Mexazî, 75)



**1425.** Me'rûr (r.) dibêje: "Ez li Rebzeyê liqayî Ebû Zer (r.) hatim. Li ser wî bedlek hebû û li ser koleyê wî bedlek hebû (qiyafeta herduka eynî bû). Min sebebê vê ji Ebû Zer pirsî. Ewî got: 'Min û zilamekî xeber kirin hevûdû. Vêca min ew bi diya wî (ya ku zencî bû) sernivz kir. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) ji min re got: *'Ya Ebû Zer! Ma tu wî bi dayîka wî sernivz dikî? Nexwe tu hê jî yek ji wan zilaman î ku tê de eserê cahiliyetê hene. Birayên we yên kole, xizmetkarên we ne ku Xwedê ew kirin emrê we. Kesê ku bin emrê wî de birayekî wî (yê kole) hebe, tişta dixwe bila bi wî jî bide xwarin û tişta li xwe dike bila li wî jî bike. Karên ji taqeta wan der bi wan nedin kirin. Heke we da kirin alîkariya wan bikin.'*"

(B30 Buxarî, Îman, 22; M4313 Muslim, Eyman, 38)



١٤٢٦- عَنْ أَبِي نَضْرَةَ حَدَّثَنِي مَنْ سَمِعَ خُطْبَةَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فِي وَسَطِ أَيَّامِ التَّشْرِيقِ فَقَالَ: "يَا أَيُّهَا النَّاسُ! أَلَا إِنَّ رَبَّكُمْ وَاحِدٌ وَإِنَّ أَبَاكُمْ وَاحِدٌ أَلَا لَا فَضْلَ لِعَرَبِيٍّ عَلَى أَعْجَمِيٍّ وَلَا لِعَجَمِيٍّ عَلَى عَرَبِيٍّ وَلَا لِأَحْمَرَ عَلَى أَسْوَدَ وَلَا أَسْوَدَ عَلَى أَحْمَرَ إِلَّا بِالتَّقْوَى..."



١٤٢٧- أَبَا مَالِكٍ الأَشْعَرِىَّ حَدَّثَهُ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "أَن أَرْبَعٌ فِى أُمَّتِى مِنْ أَمْرِ الْجَاهِلِيَّةِ لاَ يَتْرُكُونَهُنَّ الْفَخْرُ فِى الْأَحْسَابِ وَالطَّعْنُ فِى الْأَنْسَابِ وَالْإِسْتِسْقَاءُ بِالنُّجُومِ وَالنِّيَاحَةُ."

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI HIZIR DIGEL MIŞRIKAN

١٤٢٨- عَنْ عَلِيٍّ: أَنَّ أَبَا جَهْلٍ قَالَ لِلنَّبِيِّ ﷺ :إِنَّا لاَ نُكَذِّبُكَ وَلَكِنْ نُكَذِّبُ بِمَا جِئْتَ بِهِ، فَأَنْزَلَ اللَّهُ ﴿...فَإِنَّهُمْ لاَ يُكَذِّبُونَكَ وَلَكِنَّ الظَّالِمِينَ بِآيَاتِ اللَّهِ يَجْحَدُونَ﴾



١٤٢٩- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَعْرِضُ نَفْسَهُ عَلَى النَّاسِ فِى الْمَوْقِفِ فَقَالَ: "أَلاَ رَجُلٌ يَحْمِلُنِى إِلَى قَوْمِهِ فَإِنَّ قُرَيْشًا قَدْ مَنَعُونِى أَنْ أُبَلِّغَ كَلاَمَ رَبِّى."



**1426.** Ebû Nedre, gotiye: "Sehabiyekî ku xutbeya Resûlê Xwedê (s.) ya ku di roja navîn ji rojê teşrîqê de daye bihîstî, gotiye: 'Resûlê Xwedê (s.) got: '*Mirovno! Zanibin, bêguman Rebbê we yek e, bavê we yek e. Zanibin, ji bilî teqwatiyê Ereb ji Eceman, Ecem ji Ereban, kesê sor ji yê reş û kesê reş ji yê sor ne çêtir e...*'"

(HM23885 Ibn Hanbel, V, 411)



**1427.** Ji Ebû Malik el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di ummeta min de çar tişt hene ji edetên Dewra Cahiliyetê ne (zûbizû) dev ji wan bernadin. Îftîxara bi eslê xwe, zemma neseba, xwestina baranê bi sitêrka û şîna miriya bi giriyê bilind."*

(M2160 Muslim, Cena'iz, 29)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI HIZIR DIGEL MIŞRIKAN

**1428.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Ebû Cehîl ji Resûlê Xwedê re got: "Em tekzîba te nakin, belê em tekzîba dînê te anî dikin." Vêca li ser vê yekê Xwedê ev ayet nazil kir: "*... Bi rastî ew te tekzîb nakin. Belê zalim înkara ayetên Xwedê dikin.*"

(En'am, 6/33; T3064 Tirmizî, Tefsîrû'l-Kur'ân, 6)



**1429.** Cabir bin Ebdîllah gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) (di destpêka wehyê de) di weqfeya Erefê de xwe bi mirovan dida naskirin û digot: *'Ma kesekê min bibe nav qewmê xwe tune ye? (Muşrikên) Qureyşî nahêlin ez Kelamê Rebbê xwe teblîx bikim.*"

(D4734 Ebû Dawûd, Sunnet, 20; T2925 Tirmizî, Feda'îlu'l-Qur'an, 25)



١٤٣٠- عَنْ خَبَّابِ بْنِ الأَرَتِّ قَالَ: شَكَوْنَا إِلَى رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَهُوَ مُتَوَسِّدٌ بُرْدَةً لَهُ فِى ظِلِّ الْكَعْبَةِ، فَقُلْنَا: أَلاَ تَسْتَنْصِرُ لَنَا؟ أَلاَ تَدْعُو لَنَا؟ فَقَالَ: "قَدْ كَانَ مَنْ قَبْلَكُمْ يُؤْخَذُ الرَّجُلُ فَيُحْفَرُ لَهُ فِى الأَرْضِ فَيُجْعَلُ فِيهَا، فَيُجَاءُ بِالْمِنْشَارِ فَيُوضَعُ عَلَى رَأْسِهِ فَيُجْعَلُ نِصْفَيْنِ، وَيُمَشَّطُ بِأَمْشَاطِ الْحَدِيدِ مَا دُونَ لَحْمِهِ وَعَظْمِهِ، فَمَا يَصُدُّهُ ذَلِكَ عَنْ دِينِهِ، وَاللَّهِ لَيَتِمَّنَّ هَذَا الأَمْرُ، حَتَّى يَسِيرَ الرَّاكِبُ مِنْ صَنْعَاءَ إِلَى حَضْرَمَوْتَ لاَ يَخَافُ إِلاَّ اللَّهَ وَالذِّئْبَ عَلَى غَنَمِهِ، وَلَكِنَّكُمْ تَسْتَعْجِلُونَ."

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI CUHÛYÊN MEDÎNÊ RE

١٤٣١- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قَالَ: إِنِّي لَتَحْتَ رَاحِلَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ الْفَتْحِ فَقَالَ قَوْلاً حَسَنًا جَمِيلاً وَكَانَ فِيمَا قَالَ: "مَنْ أَسْلَمَ مِنْ أَهْلِ الْكِتَابَيْنِ فَلَهُ أَجْرُهُ مَرَّتَيْنِ وَلَهُ مَا لَنَا وَعَلَيْهِ مَا عَلَيْنَا وَمَنْ أَسْلَمَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ فَلَهُ أَجْرُهُ وَلَهُ مَا لَنَا وَعَلَيْهِ مَا عَلَيْنَا."



**1430.** Xebbab bin el-Erett (r.) gotiye: "Carekî Resûlê Xwedê (s.) li ber siya Ke'bê serê wî li ser kurkê wî bû. Me jê re gazinda zorbûna îşkencê kir û me got: 'Ma tu ji bo me ji Xwedê daxwaza alîkariyê nakî, ma tu ji bo me dua nakî?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ji ummetên beriya we mirovên wisa hebûn ji teref mişrikan ve dihatine girtin û ji bo wî kûrçalek dihate kolan û têxistin tê de, piştre jî xîzar tanîn û didanîn ser serê wî û serê wî dibû du qet. Mirovek dîtir jî goşt û hestiyê wî bi şehên hesin dihate şehkirin, belê cardin jî ji dînê xwe nedizîvirîn. Wellahî wê Xwedê (c.c.) vê de'wê temam bike û wê rêwengiyê suwarî ji Sen'ayê heta Hadremewtê bikeve rê, ji bil Xwedê û gur ji bo pez ji tu kesê din netirse. Belê hûn ecele dikin.'*"

(B6943 Buxarî, Îkrah, 1)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI CUHÛYÊN MEDÎNÊ RE

**1431.** Ebû Umame (r.) dibêje: "Ez roja Fetha Mekkeyê li piş suwariya Pêxember (s.) bûm. (di axaftina xwe de) gotinên gelek xweş û baş gotin. Yek ji wan ev bû: *'Kesê ji Ehlê Kîtabê kî cuhû û filehê Misilman bibe jê re du xêr hene û çi heqên ji me re heyî ji wî re jî hene û çi mesûliyetên di sitûyê me de ne ew jî ji wan berpirsiyar e. Kesê ji mişrikan Misilman bibe xêra wî jê re ye û çi heqên ji me re heyî ji wî re jî hene û çi mesûliyetên di sitûyê me de ne ew jî ji wan berpirsiyar e.*"

(HM22589 Ibn Hanbel, V, 259)



١٤٣٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما:... كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُحِبُّ مُوَافَقَةَ أَهْلِ الْكِتَابِ فِيمَا لَمْ يُؤْمَرْ فِيهِ بِشَيْءٍ...



١٤٣٣- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَدِمَ الْمَدِينَةَ فَوَجَدَ الْيَهُودَ صِيَامًا يَوْمَ عَاشُورَاءَ فَقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا هَذَا الْيَوْمُ الَّذِى تَصُومُونَهُ." قَالُوا: هَذَا يَوْمٌ عَظِيمٌ أَنْجَى اللَّهُ فِيهِ مُوسَى وَقَوْمَهُ وَغَرَّقَ فِرْعَوْنَ وَقَوْمَهُ فَصَامَهُ مُوسَى شُكْرًا فَنَحْنُ نَصُومُهُ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "فَنَحْنُ أَحَقُّ وَأَوْلَى بِمُوسَى مِنْكُمْ." فَصَامَهُ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ وَأَمَرَ بِصِيَامِهِ.



١٤٣٤- عَنِ ابْنِ أَبِى لَيْلَى أَنَّ قَيْسَ بْنَ سَعْدٍ وَسَهْلَ بْنَ حُنَيْفٍ كَانَا بِالْقَادِسِيَّةِ فَمَرَّتْ بِهِمَا جَنَازَةٌ فَقَامَا فَقِيلَ لَهُمَا: إِنَّهَا مِنْ أَهْلِ الأَرْضِ. فَقَالاَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ مَرَّتْ بِهِ جَنَازَةٌ فَقَامَ فَقِيلَ لَهُ: إِنَّهُ يَهُودِيٌّ. فَقَالَ: "أَلَيْسَتْ نَفْسًا."

**1432.** Ji Ibn Ebbas (r.) ... hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) di derbarê meselên emrê wî bi tiştekî nehatî kirin de dixwest weke Ehlê Kîtabê hereket bike ...

(B3558 Buxarî, Menaqib, 23)



**1433.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) hate Medînê, dît ku Cihû Roja Aşûrayê rojî digirin. Resûlê Xwedê (s.) ji wan pirsî: *"Ev çi roje hûn tê de rojî digirin?"* Gotin: "Ev rojeka mezin e. Xwedê Mûsa û qewmê wî di vê rojê de xilas kiriye û Firewn û qewmê wî di vê rojê de bi xerqê helak kiriye. Vêca Mûsa bo şukrê Xwedê ev rojî girtiye em jî digirin." Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Em ji hewe zehftir layîq û nêzîktirê Mûsa ne."* Vêca Resûlê Xwedê (s.) ew roj rojî girt û emrê bi rojîgirtina wê rojê kir."

(M2658 Muslim, Siyam, 128; B2004 Buxarî, Sawm, 69)



**1434.** Ji Ibn Ebî Leyla hatiye rîwayet kirin ku Qeys bin Se'd û Sehl bin Huneyf li Qadisiyê bûn. Vêca cenazeyek li ber wan re derbas bû û ew jî rabûbûne şipiya. Ji wan re hate gotin: "Ew cenaze yê mirovekî zimmi ye (hemwelatiyeke di axa Misilmana de bi Peyman dijî) Li ser vê yekê gotin: "Cenazeyek di ber Resûlê Xwedê (s.) re derbas bû. Vêca rabû ser xwe. Jê re hate gotin: "Ew cenazeyê mirovekî Cuhû ye" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma ew jî ne can e?"*

(M2225 Muslim, Cena'iz, 81; B1312 Buxarî, Cena'iz, 49)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI FILEHAN RE

١٤٣٥- أَنَّ صَفْوَانَ بْنَ سُلَيْمٍ أَخْبَرَهُ عَنْ عِدَّةٍ مِنْ أَبْنَاءِ أَصْحَابِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ عَنْ آبَائِهِمْ دِنْيَةً عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَلاَ مَنْ ظَلَمَ مُعَاهِدًا أَوِ انْتَقَصَهُ أَوْ كَلَّفَهُ فَوْقَ طَاقَتِهِ أَوْ أَخَذَ مِنْهُ شَيْئًا بِغَيْرِ طِيبِ نَفْسٍ فَأَنَا حَجِيجُهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٤٣٦- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قَالَ: إِنِّي لَتَحْتَ رَاحِلَةِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ الْفَتْحِ فَقَالَ قَوْلًا حَسَنًا جَمِيلًا وَكَانَ فِيمَا قَالَ: "مَنْ أَسْلَمَ مِنْ أَهْلِ الْكِتَابَيْنِ فَلَهُ أَجْرُهُ مَرَّتَيْنِ وَلَهُ مَا لَنَا وَعَلَيْهِ مَا عَلَيْنَا وَمَنْ أَسْلَمَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ فَلَهُ أَجْرُهُ وَلَهُ مَا لَنَا وَعَلَيْهِ مَا عَلَيْنَا."



١٤٣٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ لِمُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ حِينَ بَعَثَهُ إِلَى الْيَمَنِ: إِنَّكَ سَتَأْتِي قَوْمًا مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ، فَإِذَا جِئْتَهُمْ فَادْعُهُمْ إِلَى أَنْ يَشْهَدُوا أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ، وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ، فَإِنْ هُمْ طَاعُوا لَكَ بِذَلِكَ فَأَخْبِرْهُمْ أَنَّ اللَّهَ قَدْ فَرَضَ عَلَيْهِمْ خَمْسَ صَلَوَاتٍ فِي كُلِّ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ، فَإِنْ هُمْ طَاعُوا لَكَ بِذَلِكَ، فَأَخْبِرْهُمْ أَنَّ اللَّهَ قَدْ فَرَضَ عَلَيْكُمْ صَدَقَةً، تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ، فَتُرَدُّ عَلَى فُقَرَائِهِمْ..."



# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TÊKILIYÊN BI FILEHAN RE

**1435.** Ji Sefwan bin Suleym hatiye ragihandin ku çendek ji zarokên sehabiyên Pêxember (s.) bi rêya bavê xwe ji Resûlê Xwedê (s.) rîwayet kirine ku wiha gotiye: *"Zanibin! Kesê zilmê li zimmiyekî (hemwelatiyeke di axa Misilmanan de bi Peyman dijî) bike an heqê wî kêm bidiyê, an jî wî berpirsiyarê tişta ji taqeta wî der bike an jî bê dilê wî tiştekî jê bistîne, ez ê Roja Qiyametê xesmê wî kesî bim."*

(D3052 Ebû Dawûd, Xerac, fey' ve îmare, 31, 33)



**1436.** Ebû Umame (r.) dibêje: "Ez roja Fetha Mekkeyê li piş suwariya Pêxember (s.) bûm. (di axaftina xwe de) gotinên gelek xweş û baş gotin. Yek ji wan ev bû: *'Kesê ji Ehlê Kîtabê kî cuhû û filehê Misilman bibe jê re du xêr hene û çi heqên ji me re heyî ji wî re jî hene û çi mesûliyetên di sitûyê me de ne ew jî ji wan berpirsiyar e. Kesê ji mişrikan Misilman bibe xêra wî jê re ye û çi heqên ji me re heyî ji wî re jî hene û çi mesûliyetên di sitûyê me de ne ew jî ji wan berpirsiyar e.'"*

(HM22589 Ibn Hanbel, V, 259)



**1437.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku dema Resûlê Xwedê (s.) Muaz (r.) şiyande Yemenê, jê re got: *"Tê biçî cem qewmekî ku Ehlê Kîtab in (fileh), dema tu gihîştî cem wan vêca wan de'wet bike ku şehde bidin ji bilî Xwedê Ellah tu îlah nîn in û Muhemmed Resûlê wî ye. Heke ewan di vê xusûsê de bi ya te kirin, ji wan re bêje ku Xwedê di her roj û şevekî de pênc nimêj ser wan ferz kiriye. Heke di vê de jî bi ya te kirin bi wan bide zanîn ku Xwedê di malê wan de sedeqe ferz kiriye, bê we ku ji dewlemendan bistînin û bidine feqîran..."*

(B4347 Buxarî, Mexazî, 61)



١٤٣٨- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فِى مَرَضِهِ الَّذِى لَمْ يَقُمْ مِنْهُ: "لَعَنَ اللَّهُ الْيَهُودَ وَالنَّصَارَى اتَّخَذُوا قُبُورَ أَنْبِيَائِهِمْ مَسَاجِدَ."

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE BAWERÎ Û DÎNÊN JI BILÎ EHLÊ KÎTABAN

١٤٣٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قِيلَ لِرَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَيُّ الْأَدْيَانِ أَحَبُّ إِلَى اللَّهِ قَالَ: "الْحَنِيفِيَّةُ السَّمْحَةُ."



١٤٤٠- عَنْ أُبَيِّ بْنِ كَعْبٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ لَهُ: "...إِنَّ ذَاتَ الدِّينِ عِنْدَ اللَّهِ الْحَنِيفِيَّةُ الْمُسْلِمَةُ لاَ الْيَهُودِيَّةُ وَلاَ النَّصْرَانِيَّةُ مَنْ يَعْمَلْ خَيْرًا فَلَنْ يُكْفَرَهُ..."



١٤٤١- أَنَّ عُمَرَ بْنَ الْخَطَّابِ ذَكَرَ الْمَجُوسَ فَقَالَ: مَا أَدْرِى كَيْفَ أَصْنَعُ فِى أَمْرِهِمْ فَقَالَ: عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ أَشْهَدُ لَسَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "سُنُّوا بِهِمْ سُنَّةَ أَهْلِ الْكِتَابِ."



**1438.** Ji Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) di nexweşiya ku jê nerabûyî de gotiye: *"Xwedê Cuhû û Filehên ku tirba pêxemberên xwe kirin mizgeft (me'bed) ji rehma xwe dûr kirine."*

(M1184 Muslim, Mesacid we mewd'u's-salat, 19)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE BAWERÎ Û DÎNÊN JI BILÎ EHLÊ KÎTABAN

**1439.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: "Ma Xwedê zehftir hez ji kîjan dînî dike? Pêxember (s.) got: *"Dînê hêsan yê Henîf."*

( HM2107 Ibn Hanbel, I, 236)



**1440.** Ji Ubey bin Ke'b (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: "*... Dînê heq li cem Xwedê misilmantiya li ser esasên henîftiyê ye, ne cuhûtî û ne jî filehti ye. Kesê xêrekî bike ew beyhûde naçe nayê înkarkirin...*"

(T3793 Tirmizî, Menaqib, 32)



**1441.** Umer bin el-Xettab (r.) carekî behsa Mecûsiyan kir û got: "Ez nizanim di derheqê wan de çewa miamele bikim." Li ser vê yekê Ebdurrehman bin Ewf (r.) got: "Ez şehde didim ku min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye wiha digot: '*Bi wan re weke miamela Ehlê Kîtaba miamele bikin.*'"

(MU619 Muwatta', Zekat, 24)



١٤٤٢- عَنْ أَبِى ثَعْلَبَةَ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ قُدُورِ الْمَجُوسِ فَقَالَ: "أَنْقُوهَا غَسْلاً وَاطْبُخُوا فِيهَا."

# DÎ DEWRA HZ. PÊXEMBER DE JIN
## GIHATINA EWLEYIYA HUQÛQÎ

١٤٤٣- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ كَانَ لَهُ ثَلاَثُ بَنَاتٍ أَوْ ثَلاَثُ أَخَوَاتٍ أَوِ ابْنَتَانِ أَوْ أُخْتَانِ فَأَحْسَنَ صُحْبَتَهُنَّ وَاتَّقَى اللَّهَ فِيهِنَّ فَلَهُ الْجَنَّةُ."



١٤٤٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: كَانَتْ أُمُّ سُلَيْمٍ مَعَ نِسَاءِ النَّبِيِّ ﷺ ، وَهُنَّ يَسُوقُ بِهِنَّ سَوَّاقٌ، فَقَالَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ : "أَيْ أَنْجَشَةُ! رُوَيْدًا سَوْقَكَ بِالْقَوَارِيرِ."



١٤٤٥- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "خَيْرُكُمْ خَيْرُكُمْ لأَهْلِهِ. وَأَنَا خَيْرُكُمْ لأَهْلِى."



**1442.** Ji Ebû Se'lebe (r.) hatiye ragihandin ku di derheqê beroş û sîtilê Mecûsiyan de pirs ji Resûlê Xwedê (s.) hate kirin. Ewî got: *"Ewan bişûn û paqij bikin, piştre jî tê de xwarinê bikelênin."*

(T1796 Tirmizî, Et'ime, 7)

# DÎ DEWRA HZ. PÊXEMBER DE JIN GIHATINA EWLEYIYA HUQÛQÎ

**1443.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Kesê sê keçê wî an sê xuhê wî an jî du keç an du xuhê wî hebin. Vêca bi wan re bi xweşî bijî û di derheqê wan de ji Xwedê bi tirs e (zanayê mesûliyeta xwe be) jê re cennet heye."*

(T1916 Tirmizî, Birr we sile, 13)



**1444.** Enes bin Malik (r.) dibêje: "(Di rêya Heccetu'l-Weda'ê de) Ummû Suleym digel xanimên Pêxember (s.) yên dîtir bû. Vêca rehberekê (navê wî Enceşe) devehên wan diajot. (Dema Enceşe bi awazên xweş deveh dane lezê) Resûlê Xwedê (s.) got: *'Ey Enceşe! Barê te qirîstal in (devehan) hêdî hêdî bajo."*

(M6039 Muslim, Feda'il, 72)



**1445.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Qenctirê we ew kes e ku ji maliyê xwe re qenctir e. Ez ji maliyê xwe re qenctirîn kes im ji hewe."*

(ÎM1977 Ibn Maceh, Nîkah, 50)



١٤٤٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اللَّهُمَّ إِنِّى أُحَرِّجُ حَقَّ الضَّعِيفَيْنِ: الْيَتِيمِ وَالْمَرْأَةِ."



١٤٤٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما قَالَ: كُنَّا نَتَّقِى الْكَلاَمَ وَالإِنْبِسَاطَ إِلَى نِسَائِنَا عَلَى عَهْدِ النَّبِيِّ ﷺ هَيْبَةَ أَنْ يُنْزَلَ فِينَا شَيْءٌ، فَلَمَّا تُوُفِّىَ النَّبِيِّ ﷺ تَكَلَّمْنَا وَانْبَسَطْنَا.

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE ASTA DEBARÊ

١٤٤٨- عَنْ عَائِشَةَ زَوْجِ النَّبِيِّ ﷺ أَنَّهَا قَالَتْ: كُنْتُ أَنَامُ بَيْنَ يَدَىْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَرِجْلاَيَ فِى قِبْلَتِهِ، فَإِذَا سَجَدَ غَمَزَنِى فَقَبَضْتُ رِجْلَيَّ، فَإِذَا قَامَ بَسَطْتُهُمَا، قَالَتْ: وَالْبُيُوتُ يَوْمَئِذٍ لَيْسَ فِيهَا مَصَابِيحُ.



١٤٤٩- حَدَّثَنَا خَبَّابٌ رضي الله عنه قَالَ: هَاجَرْنَا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ نَلْتَمِسُ وَجْهَ اللَّهِ، فَوَقَعَ أَجْرُنَا عَلَى اللَّهِ، فَمِنَّا مَنْ مَاتَ لَمْ يَأْكُلْ مِنْ أَجْرِهِ شَيْئًا، مِنْهُمْ مُصْعَبُ بْنُ عُمَيْرٍ، وَمِنَّا مَنْ أَيْنَعَتْ لَهُ ثَمَرَتُهُ فَهُوَ يَهْدِبُهَا. قُتِلَ يَوْمَ أُحُدٍ فَلَمْ نَجِدْ مَا نُكَفِّنُهُ إِلاَّ بُرْدَةً إِذَا غَطَّيْنَا بِهَا رَأْسَهُ خَرَجَتْ رِجْلاَهُ، وَإِذَا غَطَّيْنَا رِجْلَيْهِ خَرَجَ رَأْسُهُ فَأَمَرَنَا النَّبِيُّ ﷺ أَنْ نُغَطِّيَ رَأْسَهُ، وَأَنْ نَجْعَلَ عَلَى رِجْلَيْهِ مِنَ الإِذْخِرِ.



**1446.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Ez derheqê mafê herdu zeîfan; sêwî û jinê de mirovan hişyar dikim, xwarina heqên wan jî qedexe dikim."*

(ÎM3678 Ibn Maceh, Edeb, 6)



**1447.** Ibn Umer (r.) gotiye: "Di zemanê Pêxember (s.) de, ji tirsa ku di derheqê me de wehiy nazil bibe, me xwe ji gotinên pêşber xanimên xwe de û pêşber wan de bi wan re ji rihet hereketkirinê diparast. Lê dema Resûlê Xwedê (s.) wefat kir, me dest bi gotin û hereketên me divî kir."

(B5187 Buxarî, Nîkah, 81)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE ASTA DEBARÊ

**1448.** Ji xanima Pêxember Aîşe (r.) hatiye ragihandin gotiye: "(Resûlê Xwedê (s.) bi şev nimêj dikir) Ez li pêşiya wî diraziham û piyên min li milê wî yê ber qiblet ve bûn. Vêca dema diçû secdê, bi destê xwe li min dida, min jî piyên xwe dikişandin û dema dirabû şipiya min piyên xwe dirêj dikirin." Piştre Hz. Aîşe (r.) gotina xwe wiha temam kir: "Wî çaxî di malan de qendîl tunebûn."

(B382 Buxarî, Salat, 22; M1145 Muslim, Salat, 272)



**1449.** Xebbab (r.) gotiye: "Me bi Resûlê Xwedê (s.) re tenê ji bo riza Xwedê hîcret kir. Xêr û mukafata me kete ser Xwedê. Belê hinekan ji me hê ji mukafata xwe (nimetên bi hîcretê hatin bi dest kirin) tiştek tam nekirî wefat kirin. Yek ji wan jî Mus'eb bû. Di nav me de kesên ku fêkiyên wî gihîştî û kom kirî (ji nimeta hîcretê feyde dîtî) jî hebûn. Mus'eb Roja Uhudê hate kuştin. Ji bo kefenkirina wî me ji bilî cubbeyek (piçûk) tiştek nedît. Ew jî dema me serê wî pê dinixumand lingê wî diman ji derve û çaxa me lingê wî dinixumand serê wî dima ji derve. Vêca Resûlê Xwedê (s.) emrê me kir ku em serê wî binuxumênin û lingê wî bi giyayê îzxirê binuxumênin."

(B1276 Buxarî, Cena'iz, 27)



١٤٥٠- عَنْ أَبِى مَسْعُودٍ الأَنْصَارِىِّ ﷺ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا أَمَرَنَا بِالصَّدَقَةِ انْطَلَقَ أَحَدُنَا إِلَى السُّوقِ فَتَحَامَلَ فَيُصِيبُ الْمُدَّ، وَإِنَّ لِبَعْضِهِمُ الْيَوْمَ لَمِائَةَ أَلْفٍ.



١٤٥١- عَنْ عَلِيٍّ ﷺ قَالَ: جَهَّزَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ فَاطِمَةَ فِى خَمِيلٍ وَقِرْبَةٍ وَوِسَادَةٍ حَشْوُهَا إِذْخِرٌ.

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TIŞTÊN DIHATINE BIKARANÎN

١٤٥٢- عَنْ جَابِرٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "أَطْفِئُوا الْمَصَابِيحَ إِذَا رَقَدْتُمْ، وَغَلِّقُوا الْأَبْوَابَ، وَأَوْكُوا الْأَسْقِيَةَ، وَخَمِّرُوا الطَّعَامَ وَالشَّرَابَ..."



١٤٥٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْوَزْنُ وَزْنُ أَهْلِ مَكَّةَ وَالْمِكْيَالُ مِكْيَالُ أَهْلِ الْمَدِينَةِ."



١٤٥٤- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يُدْخِلُ ثَلَاثَةَ نَفَرٍ الْجَنَّةَ بِالسَّهْمِ الْوَاحِدِ صَانِعَهُ يَحْتَسِبُ فِى صُنْعِهِ الْخَيْرَ وَالرَّامِيَ بِهِ وَمُنَبِّلَهُ."

**1450.** Ebû Mesûd el-Ensarî (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) emrê me bi sedeqedanê dikir, hinek (kesên îmkana wan tuneyî) ji me diçû sûkê hemaltî dikir muddek (nêzî kîloyekî) xurme bi dest dixist (û ew bi sedeqe dida) Vêca îro hinek ji wan sed hezar serweta wan heye. (Belê niha sedeqe nade.)"

(B1416 Buxarî, Zekat, 10)



**1451.** Hz. Elî (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) cîhazê Fatîmeyê qumaşek qedîfe, meşka avê û balgihek nava wî bi giyayê îzxirê hatî dagirtin hazir kiribû."

(N3386 Nesaî, Nikah, 81; HM715 Ibn Hanbel, I, 92)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TIŞTÊN DIHATINE BIKARANÎN

**1452.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema hûn razihin, qendîlan bitefênin, deriyan dadin, devê firaxên avê girê bidin û xwarin û vexwarinan binixumênin..."*

(B5624 Buxarî, Eşribe, 22)



**1453.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Mêzîn mêzîna Ehlê Mekkê ye û elb elba Ehlê Medînê ye."*

(D3340 Ebû Dawûd, Buyû', 8)



**1454.** Ji Uqbe bin 'Amir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle bi tîrekî tenê sê kesan têxe cennetê: Kesê ku tenê ji bo xêrê bi dest bike tîr çêdike, kesê wî tavêje (neyarî) û kesê tûjka serê tîr çêdike."*

(N3148 Nesaî, Cihad, 26)

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TIP

١٤٥٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ ، عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا أَنْزَلَ اللَّهُ دَاءً إِلاَّ أَنْزَلَ لَهُ شِفَاءً."



١٤٥٦- عَنْ أُسَامَةَ بْنِ شَرِيكٍ قَالَ: قَالَتِ الأَعْرَابُ يَا رَسُولَ اللَّهِ! أَلاَ نتَدَاوَى؟ قَالَ: "نَعَمْ يَا عِبَادَ اللَّهِ تَدَاوَوْا، فَإِنَّ اللَّهَ لَمْ يَضَعْ دَاءً إِلاَّ وَضَعَ لَهُ شِفَاءً أَوْ دَوَاءً، إِلاَّ دَاءً وَاحِدًا." قَالُوا يَا رَسُولَ اللَّهِ! وَمَا هُوَ؟ قَالَ: "الْهَرَمُ."



•

١٤٥٧- عَنْ أَبِى الدَّرْدَاءِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ أَنْزَلَ الدَّاءَ وَالدَّوَاءَ وَجَعَلَ لِكُلِّ دَاءٍ دَوَاءً فَتَدَاوَوْا وَلاَ تَدَاوَوْا بِحَرَام."



١٤٥٨- عَنْ جَابِرٍ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "لِكُلِّ دَاءٍ دَوَاءٌ، فَإِذَا أُصِيبَ دَوَاءُ الدَّاءِ بَرَأَ بِإِذْنِ اللَّه تَعَالَى."

# DI DEWRA HZ. PÊXEMBER DE TIP

**1455.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê derdek bê derman nedaye."*

(B5678 Buxarî, Tib, 1)



**1456.** Ji Usame bin Şerîk hatiyê rîwayetkirin ku bedewiyan gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma em xwe tedawî nekin?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Belê, ey bendeên Xwedê! Tedawî bibin. Bêguman Xwedê ji bilî derdekî tu derdê bêderman an bê şîfa nedaye."* Gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Ma ew çi ye?" Got: *"Ixtiyari ye."*

(T2038 Tirmizî, Tıb, 2)



**1457.** Ji Ebu'd-Derda' (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê derd jî daye derman jî daye û her derdek dermanek wê çêkiriye. Vêca tedawî bibin, belê bi heramî tedawî nebin."*

(D3874 Ebû Dawûd, Tib, 11)



**1458.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her derdek dermanê wê heye. Dema di dermanê derdekî îsabet were kirin, bi izna Xwedê şîfa dibe."*

(M5741 Muslim, Selam, 69)

# GOTINÊN RESÛLÊ XWEDÊ YÊN DI DERHEQÊ BAJARAN DE

١٤٥٩- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَوْمَ الْفَتْحِ فَتْحِ مَكَّةَ... "إِنَّ هَذَا الْبَلَدَ حَرَّمَهُ اللَّهُ يَوْمَ خَلَقَ السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضَ فَهُوَ حَرَامٌ بِحُرْمَةِ اللَّهِ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ..."



١٤٦٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَدِيِّ بْنِ حَمْرَاءَ [الزُّهْرِيِّ] قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَاقِفًا عَلَى الْحَزْوَرَةِ فَقَالَ: وَاللَّهِ! إِنَّكِ لَخَيْرُ أَرْضِ اللَّهِ وَأَحَبُّ أَرْضِ اللَّهِ إِلَى اللَّهِ وَلَوْلاَ أَنِّى أُخْرِجْتُ مِنْكِ مَا خَرَجْتُ."



١٤٦١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ : "أُمِرْتُ بِقَرْيَةٍ تَأْكُلُ الْقُرَى يَقُولُونَ يَثْرِبُ وَهِيَ الْمَدِينَةُ تَنْفِي النَّاسَ كَمَا يَنْفِي الْكِيرُ خَبَثَ الْحَدِيدِ."



١٤٦٢- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ زَيْدٍ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ : "أَنَّ إِبْرَاهِيمَ حَرَّمَ مَكَّةَ، وَدَعَا لَهَا، وَحَرَّمْتُ الْمَدِينَةَ كَمَا حَرَّمَ إِبْرَاهِيمُ مَكَّةَ، وَدَعَوْتُ لَهَا فِى مُدِّهَا وَصَاعِهَا، مِثْلَ مَا دَعَا إِبْرَاهِيمُ [عَلَيْهِ السَّلاَمُ] لِمَكَّةَ.



# GOTINÊN RESÛLÊ XWEDÊ YÊN DI DERHEQÊ BAJARAN DE

**1459.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) roja fetha Mekkeyê de gotiye: "*...Bêguman ev bajar, bajareke pîroz e. Xwedê Ezze we Celle roja ku erd û asîman çêkirîn ve ew heram kiriye (ku têde kuştin çêbe). Vêca ev bajar bi emrê Xwedê bi heramkirina wê heta Roja Qiyametê heram bûye...*"

(M3302 Muslim, Hec, 445)



**1460.** Ebdullah bin 'Edî bin Hemra' ez-Zuhrî gotiye: "Min Resûlê Xwedê (s.) dît li cihekî ku jê re dibêjin el-Xezwere, digot: '*(Ey Mekke!) Wellahî tu xêrtirîn erdê Xwedê yî û tu ew cih î ku Xwedê zehftir hez jê dike. Ger ez ji te nehatibama derxistin ez dernediketim (min terka te nedikir)*'"

(T3925 Tirmizî, Menaqib, 68)



**1461.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Emr li min hate kirin ku ez hîcretê bajareke ku bajarên dîtir daqurtêne bikim. Jê re dibêjin Yesrîb, belê ew el-Medîne ye. Mîna ku nixafa hêsinçêkerî qirêja hêsin jê dibe ev bajar jî mirovên xirab ji xwe tavêje.*"

(HM7364 Ibn Hanbel, II, 248; B1871 Buxarî, Feda'ilu'l-Medîne, 2)



**1462.** Ji Ebdullah bin Zeyd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Bêguman Îbrahîm Mekke heram îlan kir û jê re dua kir. Vêca mîna ku Îbrahîm Mekke heram îlan kirî min jî Medîne heram îlan kir û mîna ku Îbrahîm (es.) ji bo Mekkeyê dua kirî min jî ji bo bereket bikeve pîvan û mêzîna wê de ji Medînê re dua kir.*"

(B2129 Buxarî, Buyû', 53)



١٤٦٣- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "اللَّهُمَّ بَارِكْ لَنَا فِى شَأْمِنَا اللَّهُمَّ بَارِكْ لَنَا فِى يَمَنِنَا."

# HEZJÊKIRINA WELAT Û MEMLEKETÎ

١٤٦٤- عَنْ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا قَالَتْ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "اللَّهُمَّ حَبِّبْ إِلَيْنَا الْمَدِينَةَ، كَمَا حَبَّبْتَ إِلَيْنَا مَكَّةَ أَوْ أَشَدَّ..."



١٤٦٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَدِيِّ بْنِ حَمْرَاءَ [الزُّهْرِيِّ] قَالَ: رَأَيْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ وَاقِفًا عَلَى الْحَزْوَرَةِ فَقَالَ: وَاللَّهِ إِنَّكِ لَخَيْرُ أَرْضِ اللَّهِ وَأَحَبُّ أَرْضِ اللَّهِ إِلَى اللَّهِ وَلَوْلاَ أَنِّي أُخْرِجْتُ مِنْكِ مَا خَرَجْتُ."



١٤٦٦- عَنْ سَلْمَانَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "رِبَاطُ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ خَيْرٌ مِنْ صِيَامِ شَهْرٍ وَقِيَامِهِ وَإِنْ مَاتَ جَرَى عَلَيْهِ عَمَلُهُ الَّذِى كَانَ يَعْمَلُهُ وَأُجْرِيَ عَلَيْهِ رِزْقُهُ وَأَمِنَ الْفَتَّانَ.



**1463.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Tu Şama me ji me re bereket bike! Xwedayê min! Yemena me ji me re bereket bike!"*

(T3953 Tirmizî, Menaqib, 74)

# HEZJÊKIRINA WELAT Û MEMLEKETÎ

**1464.** Ji Hz. Aîşe (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Çewa te dilê me bi Mekkeyê dabû xweşkirin dilê me bi Medînê jî hewqasî û zêdetir jî bide xweşkirin..."*

(B6372 Buxarî, De'ewat, 43)



**1465.** Ebdullah bin 'Edî bin Hemra' ez-Zuhrî gotiye: "Min Resûlê Xwedê (s.) dît li cihekî ku jê re dibêjin el-Xezwere, digot: '*(Ey Mekke!) Wellahî tu xêrtirîn erdê Xwedê yî û tu ew cih î ku Xwedê zehftir hezjê dike. Ger ez ji te nehatibama derxistin ez dernediketim (min terka te nedikir)*'"

(T3925 Tirmizî, Menaqib, 68; İM3108 Ibn Maceh, Menasik, 103)



**1466.** Selman ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Nobeta roj û şevekê di rêya Xwedê de, ji rojîgirtin û bi şev îbadetkirina mehekê xêrtir e. Vêca heke nobetgir (di wextê nobetê de) bimre wê xêra emelê wî yê nobetê were nivîsandin û rizqê wî jî wê were dayîn û wê ji lêpirsîna melekên qebrê bi ewle be."*

(M4938 Muslim, Îmare, 163)



١٤٦٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "عَيْنَانِ لاَ تَمَسُّهُمَا النَّارُ عَيْنٌ بَكَتْ مِنْ خَشْيَةِ اللَّهِ وَعَيْنٌ بَاتَتْ تَحْرُسُ فِى سَبِيلِ اللَّهِ."



١٤٦٨- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ: أَنَّ رَايَةَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ كَانَتْ سَوْدَاءَ وَلِوَاؤُهُ أَبْيَضُ.

# DERDOR
## SIRÛŞT/TEBÎET BIRAYÊ ME YE

١٤٦٩- عَنْ أَبِى حُمَيْدٍ قَالَ: أَقْبَلْنَا مَعَ النَّبِيِّ ﷺ مِنْ غَزْوَةِ تَبُوكَ حَتَّى إِذَا أَشْرَفْنَا عَلَى الْمَدِينَةِ قَالَ: "هَذِهِ طَابَةُ، وَهَذَا أُحُدٌ، جَبَلٌ يُحِبُّنَا وَنُحِبُّهُ."



١٤٧٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "... وَجُعِلَتْ لِيَ الأَرْضُ طَهُورًا وَمَسْجِدًا..."



١٤٧١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "...وَيُمِيطُ الأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ."



**1467.** Ibn Ebbas (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Du çav hene agirê cehnemê li wan nakeve: Çavê ku ji tirsa Xwedê digirî û çavê şeva xwe di rêya Xwedê de bi nobetê derbas kirî."*

(T1639 Tirmizî, Feda'ilu'l-Cîhad, 12)



**1468.** Ibn Ebbas (r.) gotiye: "Ala Resûlê Xwedê (s.) reş bû û senceqa wî sipî bû."

(İM2818 Ibn Maceh, Cîhad, 20; N2869 Nesaî, Menasiku'l-hec, 106)

# DERDOR
## SIRÛŞT/TEBÎET BIRAYÊ ME YE

**1469.** Ebû Humeyd (r.) gotiye: "Em digel Resûlê Xwedê (s.) ji Herba Tebûkê dizivirîn. Dema em nêzîkê Medînê bûn Resûlê Xwedê (s.) got: *'Iha va ye Tabe ye (bajarê başî û xweşîtiyê) û ev jî Uhud e, çiyayeke ku hez ji me dike û em jî hez ji wî dikin.'*"

(B4422 Buxarî, Mexazî, 82)



**1470.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*…Rûyê erdê ji min re bûye mizgeft û paqij…*"

(M1167 Muslim, Mesacid we mewdi'u's-salat, 5)



**1471.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*…Avêtina tiştên ku di rê de mirovan aciz dikin sedeqe ye.*"

(B2989 Buxarî, Cîhad, 128)



١٤٧٢- عَنْ مُعَاذِ بْنِ جَبَلٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اتَّقُوا الْمَلاَعِنَ الثَّلاَثَةَ الْبَرَازَ فِى الْمَوَارِدِ وَقَارِعَةِ الطَّرِيقِ وَالظِّلِّ."



١٤٧٣- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنْ قَامَتْ عَلَى أَحَدِكُمْ الْقِيَامَةُ وَفِي يَدِهِ فَسِيلَةٌ فَلْيَغْرِسْهَا."

# AV
## KEHNIYA HEYATÊ

١٤٧٤- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "غَطُّوا الإِنَاءَ، وَأَوْكُوا السِّقَاءَ..."



١٤٧٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَبُولَنَّ أَحَدُكُمْ فِى الْمَاءِ الدَّائِمِ..."



١٤٧٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا شَرِبَ أَحَدُكُمْ، فَلاَ يَتَنَفَّسْ فِى الْإِنَاءِ. فَإِذَا أَرَادَ أَنْ يعُودَ، فَلْيُنَحِّ الْإِنَاءَ ثُمَّ لْيَعُدْ، إِنْ كَانَ يُرِيدُ."



**1472.** Ji Muaz bin Cebel (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwe ji sê tiştên dibine sebebê lenetlêanînê biparêzin; Destava xwe li derdora kehniyên avê, di nîvê rê de û di cihên sih de nekin."*

(D26 Ebû Dawûd, Teharet, 14)



**1473.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke qiyamet di serê yekî ji we de rabû û di destê wî de fîdanek hebe bila biçîne."*

(HM12933 Ibn Hanbel, III, 184)

# AV
## KEHNIYA HEYATÊ

**1474.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Firaxan binixumînin û devê meşka avê girê bidin..."*

(M5255 Muslim, Eşribe, 99)



**1475.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes di ava sekinî de mîz neke..."*

(M656 Muslim, Teharet, 95)



**1476.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji we av vexwar bila nefesa xwe neberde firaxê. Dema xwest carek dî avê vexwe bila firaxê ji devê xwe dûr bike (bêhna xwe berde) û piştre vexwe."*

(İM3427 Ibn Maceh, Eşribe, 23)



١٤٧٧- عَنْ سَعِيدٍ، أَنَّ سَعْدًا أَتَى النَّبِيَّ ﷺ فَقَالَ: أَيُّ الصَّدَقَةِ أَعْجَبُ إِلَيْكَ؟ قَالَ: "الْمَاءُ."

# BAJAR Û XANÎ

١٤٧٨- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ خَرَجَ فَرَأَى قُبَّةً مُشْرِفَةً... فَقَالَ: "أَمَا إِنَّ كُلَّ بِنَاءٍ وَبَالٌ عَلَى صَاحِبِهِ إِلاَّ مَا لاَ إِلاَّ مَا لاَ."



١٤٧٩- عَنِ الْمُسْتَوْرِدِ بْنِ شَدَّادٍ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ كَانَ لَنَا عَامِلاً فَلْيَكْتَسِبْ زَوْجَةً فَإِنْ لَمْ يَكُنْ لَهُ خَادِمٌ فَلْيَكْتَسِبْ خَادِمًا فَإِنْ لَمْ يَكُنْ لَهُ مَسْكَنٌ فَلْيَكْتَسِبْ مَسْكَنًا."



١٤٨٠- حَدَّثَنَا إِسْمَاعِيلُ بْنُ مُحَمَّدِ بْنِ سَعْدِ بْنِ أَبِي وَقَّاصٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مِنْ سَعَادَةِ ابْنِ آدَمَ ثَلاَثَةٌ وَمِنْ شِقْوَةِ ابْنِ آدَمَ ثَلاَثَةٌ مِنْ سَعَادَةِ ابْنِ آدَمَ الْمَرْأَةُ الصَّالِحَةُ وَالْمَسْكَنُ الصَّالِحُ وَالْمَرْكَبُ الصَّالِحُ وَمِنْ شِقْوَةِ ابْنِ آدَمَ الْمَرْأَةُ السُّوءُ وَالْمَسْكَنُ السُّوءُ وَالْمَرْكَبُ السُّوءُ."

**1477.** Ji Seîd (bin Museyyeb) (r.) hatiye ragihandin ku Se'd (bin 'Ubade) hate cem Resûlê Xwedê (s.) û got: "Ma sedeqedana çi tiştî zehftir xweşa te diçe?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Av"*

(D1679 Ebû Dawûd, Zekat, 41)

# BAJAR Û XANÎ

**1478.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) derket (li nava Medînê) geriha, avahiyek bilind dît... Vêca got: *"Zanibin, ji bilî ya lazim her bîna ji xwediyê xwe re webal e."*

(D5237 Ebû Dawûd, Edeb, 156-157)



**1479.** Ji Mustewrîd bin Şeddad (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Kesê di emrê me de wezîfedar be, (heke nezewicîbe) bila bizewice, heke xizmetkarê wî nebe bila ji xwe re xizmetkarekî bigire û heke xaniyê wî nebe bila xaniyekî ji xwe re bistîne."*

(D2945 Ebû Dawûd, Xerac, fey' we Îmare, 9, 10)



**1480.** Îsmaîl bin Muhemmed (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe ragihandiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sê tişt ji xweşhaliya mêra ye û sê tişt jî ji bextreşiya mêra ye. Tiştên ji xweşhaliya mêra ev in: Hevsera baş, avayiya baş û suwariya baş. Tiştên ji bextreşiya mêra jî ev in: Hevsera xirab, avahiya xirab û suwariya xirab."*

(HM1445 Ibn Hanbel, I, 169)

# WEQF
## XÊRA BERDEWAM

١٤٨١- عَنِ ابْنِ عُمَرَ رضي الله عنهما أَنَّ عُمَرَ تَصَدَّقَ بِمَالٍ لَهُ عَلَى عَهْدِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَكَانَ يُقَالُ لَهُ ثَمْغٌ، وَكَانَ نَخْلاً، فَقَالَ عُمَرُ: يَا رَسُولَ اللَّهِ، إِنِّى اسْتَفَدْتُ مَالاً وَهُوَ عِنْدِى نَفِيسٌ فَأَرَدْتُ أَنْ أَتَصَدَّقَ بِهِ. فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "تَصَدَّقْ بِأَصْلِهِ، لاَ يُبَاعُ وَلاَ يُوهَبُ وَلاَ يُورَثُ، وَلَكِنْ يُنْفَقُ ثَمَرُهُ."



١٤٨٢- عَنْ عَمْرِو بْنِ الْحَارِثِ قَالَ: مَا تَرَكَ النَّبِيُّ ﷺ إِلاَّ سِلاَحَهُ وَبَغْلَةً بَيْضَاءَ وَأَرْضًا بخَيْبَرَ جَعَلَهَا صَدَقَةً.



١٤٨٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِذَا مَاتَ الإِنْسَانُ انْقَطَعَ عَنْهُ عَمَلُهُ إِلاَّ مِنْ ثَلاَثَةٍ إِلاَّ مِنْ صَدَقَةٍ جَارِيَةٍ أَوْ عِلْمٍ يُنْتَفَعُ بِهِ أَوْ وَلَدٍ صَالِحٍ يَدْعُو لَهُ."



١٤٨٤- عَنْ مَحْمُودِ بْنِ لَبِيدٍ أَنَّ عُثْمَانَ بْنَ عَفَّانَ أَرَادَ بِنَاءَ الْمَسْجِدِ. فَكَرِهَ النَّاسُ ذَلِكَ وَأَحَبُّوا أَنْ يَدَعَهُ عَلَى هَيْئَتِهِ فَقَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَنْ بَنَى مَسْجِدًا لِلَّهِ بَنَى اللَّهُ لَهُ فِى الْجَنَّةِ مِثْلَهُ."



# WEQF
## XÊRA BERDEWAM

**1481.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Umer (r.) di dewra Pêxember (s.) de xwest ku bexçê xwe yê xurma yê bi navê Semx bike sedeqe. Vêca hate cem Pêxember (s.) û got: "Ya Resûlê Xwedê! Ez bûme xwediyê malekî ku li cem min gelek bi qîmet e. Ez dixwazim bikim sedeqe." Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bi şertê ku neyê firotin, neyê hîbekirin, nebe mîras û tenê fêkiyê wê bi sedeqe were dayîn eslê wê bike sedeqe."*

(B2764 Buxarî, Wesaya, 22)



**1482.** Ji 'Emr bin el-Haris hatiye rîwayetkirin ku Resûlê Xwedê (s.) piştî mirina xwe ji bilî sîlehê xwe, hêstira xwe ya sipî û miqdarek erd yê li Xeyberê tiştek ne hiştibû. Yê hiştî jî kire sedeqe.

(B2912 Buxarî, Cîhad, 86)



**1483.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wextê însan bimre ji bilî sê tiştan deftera emelê wî tê girtin: Sedeqa carîye (ya ku feyda wê dewam dike), ilmê jê feyde tête dîtin û ew ewladê salih yê jê re dua dike."*

(M4223 Muslim, Wesiyye, 14)



**1484.** Ji Mehmûd bin Lebîd hatiye rîwayet kirin ku Osman bin 'Effan (r.) xwest mizgeftê (ji nûve) ava bike. Belê mirovan li xwe xweş neanîn û hez kirin ku li ser halê berê bihêle. Li ser vê yekê Osman got: "Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *'Kesê mizgeftekî ji bo Xwedê ava bike, wê Xwedê di cennetê de (avahiyek) mîna wê jê re ava bike.'*"

(M7471 Muslim, Zuhd we reqa'iq, 44)



١٤٨٥- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَا مِنْ مُسْلِمٍ غَرَسَ غَرْسًا فَأَكَلَ مِنْهُ إِنْسَانٌ أَوْ دَابَّةٌ إِلاَّ كَانَ لَهُ صَدَقَةً."

# ZADXWARIN
## ADAB Û RÊZÊN XWARIN XWARINÊ

١٤٨٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الطَّاعِمُ الشَّاكِرُ بِمَنْزِلَةِ الصَّائِمِ الصَّابِرِ."



١٤٨٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَيُّهَا النَّاسُ! إِنَّ اللَّهَ طَيِّبٌ لاَ يَقْبَلُ إِلاَّ طَيِّبًا، وَإِنَّ اللَّهَ أَمَرَ الْمُؤْمِنِينَ بِمَا أَمَرَ بِهِ الْمُرْسَلِينَ، فَقَالَ: ﴿يَا أَيُّهَا الرُّسُلُ كُلُوا مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَاعْمَلُوا صَالِحًا إِنِّى بِمَا تَعْمَلُونَ عَلِيمٌ﴾ وَقَالَ: ﴿يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا رَزَقْنَاكُمْ﴾. ثُمَّ ذَكَرَ، الرَّجُلَ يُطِيلُ السَّفَرَ، أَشْعَثَ أَغْبَرَ، يَمُدُّ يَدَيْهِ إِلَى السَّمَاءِ، يَا رَبِّ! يَا رَبِّ! وَمَطْعَمُهُ حَرَامٌ، وَمَشْرَبُهُ حَرَامٌ، وَمَلْبَسُهُ حَرَامٌ، وَغُذِىَ بِالْحَرَامِ، فَأَنَّى يُسْتَجَابُ لِذَلِكَ؟."



١٤٨٨- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رضي الله عنه قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَأْكُلُ الْمُسْلِمُ فِى مِعًى وَاحِدٍ، وَالْكَافِرُ يَأْكُلُ فِى سَبْعَةِ أَمْعَاءٍ."



**1485.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kî Misilmanê ku tiştekî biçîne, vêca însanek an jî heywanek jê bixwe ew jê re dibe sedeqe."*

(B6012 Buxarî, Edeb, 27)

# ZADXWARIN
## ADAB Û RÊZÊN XWARIN XWARINÊ

**1486.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê dixwe û şukr dike (ji cîhet xêr ve) weke ew rojîgir ê sebr dike ye."*

(T2486 Tirmizî, Sifetu'l-qiyame, 43)



**1487.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî mirovan! Bêguman Xwedê paqij e, tişta ne paqij be qebûl nake. Tişta Xwedê emrê pêxemberan pê kirî emrê muminan jî pê kiriye. Xwedê gotiye: 'Gelî pêxemberan! Ji tiştên paqij bixwin û emelê qenc bikin. Bi rastî ez zanayê wan tiştan im yên ku hûn dikin.' Û gotiye. 'Gelî kesên ku îman anîn! Ji rizqê paqij ê me dayî we bixwin.' Piştre jî behsa zilamekî kir ku ketiye seferek dirêj, di nav tozê de maye, pora wî nav hev ketiye û destê xwe bilindê asîmanan kiriye dibêje: 'Ya Reb, ya Reb!' welhal xwarina wî heram bû, vexwarina wî heram bû, cil û bergên wî heram bû û bi heram hatiye zadkirin. Ma vêca wê çewa duayên wî werin qebûlkirin!'"*

(M2346 Muslim, Zekat, 65; T2989 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 2)



**1488.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Misilman bi (îştîha) zikekî tenê dixwe û kafir bi (îştîha) heft zikan dixwe."

(B5396 Buxarî, Et'ime, 12)



١٤٨٩- عَنْ مِقْدَامِ بْنِ مَعْدِيكَرِبَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "مَا مَلأَ آدَمِيٌّ وِعَاءً شَرًّا مِنْ بَطْنٍ، بِحَسْبِ ابْنِ آدَمَ أُكُلاَتٌ يُقِمْنَ صُلْبَهُ، فَإِنْ كَانَ لاَ مَحَالَةَ فَثُلُثٌ لِطَعَامِهِ وَثُلُثٌ لِشَرَابِهِ وَثُلُثٌ لِنَفَسِهِ."



١٤٩٠- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "طَعَامُ الْوَاحِدِ يَكْفِى الإِثْنَيْنِ، وَطَعَامُ الإِثْنَيْنِ يَكْفِى الأَرْبَعَةَ."

# VEXWARIN

١٤٩١- عَنِ الضَّحَّاكِ بْنِ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ عَرْزَمٍ الأَشْعَرِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ أَبَا هُرَيْرَةَ يَقُولُ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَوَّلَ مَا يُسْأَلُ عَنْهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ يَعْنِى الْعَبْدَ مِنَ النَّعِيمِ أَنْ يُقَالَ لَهُ أَلَمْ نُصِحَّ لَكَ جِسْمَكَ وَنُرْوِيكَ مِنَ الْمَاءِ الْبَارِدِ."



١٤٩٢- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ... فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِذَا أَكَلَ أَحَدُكُمْ طَعَامًا فَلْيَقُلِ اللَّهُمَّ! بَارِكْ لَنَا فِيهِ وَأَطْعِمْنَا خَيْرًا مِنْهُ. وَإِذَا سُقِيَ لَبَنًا فَلْيَقُلِ: اللَّهُمَّ! بَارِكْ لَنَا فِيهِ وَزِدْنَا مِنْهُ فَإِنَّهُ لَيْسَ شَيْءٌ يُجْزِئُ مِنَ الطَّعَامِ وَالشَّرَابِ إِلاَّ اللَّبَنُ."



**1489.** Miqdam bin Me'dîkerîb (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Tu mirovî ji zik xirabtir firaxek tije nekiriye. Çend pariyên pişta mirovî rast bike besî wî ye. Heke mitleqa lazim e tije bike, bila sêyeka zik ji xwarinê re, sêyek ji vexwarinê re û sêyek jî ji nefesê re veqetîne."*

(T2380 Tirmizî, Zuhd, 47)



**1490.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwarina şexsekî besî duduyan e û xwarina duduyan besî çar şexsan e."*

(M5370 Muslim, Eşribe, 180)

# VEXWARIN

**1491.** Dehhak bin Ebdirrehman bin 'Erzem el-Eş'erî, ji Ebû Hureyre (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "Roja Qiyametê wexta ebd ji nîmetan tê hesabdan pêşî jê wiha tê pirsîn: *"Ma me sihhet nedabû bedena te? Ma me tu bi ava cemidî têrav nekirî?"*

(T3358 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 102)



**1492.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yekî ji we xwarin xar bila bêje: 'Ya Rebbî! Tu ji me re bereketê bixe vê xwarinê û xwarina jê çêtir îkrama me bike. Dema şîr jê re hate îkram kirin, bila bêje: Xwedayê min! Tu ji me re bereketê bixe vî şîrî û wî li me zêde bike. Lewra tişta hem kêr xwarinê were û hem kêr vexwarinê were şîr e."*

(D3730 Ebû Dawûd, Eşribe, 21)



١٤٩٣- عَنْ أَنَسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ إِذَا أَوَى إِلَى فِرَاشِهِ قَالَ: "الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِى أَطْعَمَنَا وَسَقَانَا وَكَفَانَا وَآوَانَا فَكَمْ مِمَّنْ لاَ كَافِيَ لَهُ وَلاَ مُئْوِيَ."



١٤٩٤- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَا أَسْكَرَ كَثِيرُهُ فَقَلِيلُهُ حَرَامٌ."



١٤٩٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "كُلُّ مُسْكِرٍ خَمْرٌ وَكُلُّ مُسْكِرٍ حَرَامٌ."

# SIHHET
## NÎ'META HERÎ MEZIN

١٤٩٦- قَالَ عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ عَوْفٍ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا سَمِعْتُمْ بِهِ بِأَرْضٍ فَلاَ تَقْدِمُوا عَلَيْهِ وَإِذَا وَقَعَ بِأَرْضٍ وَأَنْتُمْ بِهَا فَلاَ تَخْرُجُوا، فِرَارًا مِنْهُ."



١٤٩٧- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رضي الله عنهما قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "نِعْمَتَانِ مَغْبُونٌ فِيهِمَا كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ: الصِّحَّةُ وَالْفَرَاغُ."



**1493.** Ji Enes (bin Malik) (r.) hatiye rîwayetkirin ku dema Resûlê Xwedê (s.) diçû ser doşeka xwe ev dua dixwend: *"Hemd ji wî Xwedayî re be ku em têr xwarin û têr av kirine, (di her xusûsê de) besî me ye û em hewandine. Çiqas mirov hene ku kesekê îhtiyaciyên wan pêk bîne û ciheke lê bihewe tune ye!"*

(M6894 Muslim, Zikir we dua we tewbe we îstîxfar, 64)



**1494.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tişta zehfê wê serxweş dike hindikê wê jî heram e."*

(T1865 Tirmizî, Eşribe, 3; D3681 Ebû Dawûd, Eşribe, 5)



**1495.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her tişta serxweş dike ereq e û her tişta serxweş dike heram e."*

(M5219 Muslim, Eşribe, 74)

# SIHHET
## NÎ'META HERÎ MEZIN

**1496.** Ebdurrehman bin Ewf (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Dema we bihîst ku li derekî weba heye neçine wir. Dema weba li dereka ku hûn lêne peyda bû ji ber wê nerevin û jê nederkevin."*

(D3103 Ebû Dawûd, Cena'iz, 6)



**1497.** Ji Ibn Ebbas (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Du nîmet hene pirê însanan di derheqê wan de xapane: sihhet û zemanê vale."*

(B6412 Buxarî, Riqaq, 1)



١٤٩٨- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَا سُئِلَ اللَّهُ شَيْئًا أَحَبَّ إِلَيْهِ مِنْ أَنْ يُسْأَلَ الْعَافِيَةَ."



١٤٩٩- عَنْ سَلَمَةَ بْنِ عُبَيْدِ اللَّهِ بْنِ مِحْصَنٍ الْخَطْمِيِّ عَنْ أَبِيهِ –وَكَانَتْ لَهُ صُحْبَةٌ– قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ أَصْبَحَ مِنْكُمْ آمِنًا فِى سِرْبِهِ مُعَافًى فِى جَسَدِهِ، عِنْدَهُ قُوتُ يَوْمِهِ، فَكَأَنَّمَا حِيزَتْ لَهُ الدُّنْيَا."

# PAQIJIYA DEV Û DINANAN

١٥٠٠- عَنْ أَبِى أَيُّوبَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَرْبَعٌ مِنْ سُنَنِ الْمُرْسَلِينَ الْحَيَاءُ وَالتَّعَطُّرُ و السِّوَاكُ وَالنِّكَاحُ."



١٥٠١- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ "قَدْ أَكْثَرْتُ عَلَيْكُمْ فِى السِّوَاكِ."



١٥٠٢- عَنِ الْمِقْدَامِ بْنِ شُرَيْحٍ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: سَأَلْتُ عَائِشَةَ قُلْتُ بِأَيِّ شَيْءٍ كَانَ يَبْدَأُ النَّبِيُّ ﷺ إِذَا دَخَلَ بَيْتَهُ؟ قَالَتْ: بِالسِّوَاكِ.



**1498.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Xwedê ji her tiştî zêdetir dive ku sihhet û afiyet jê were xwestin.*"

(T3515 Tirmizî, De'ewat, 84)



**1499.** Seleme bin Ubeydîllah bin Mihsen el-Hutemî, ji bavê xwe yê ku sehabî ye rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Kesê lê bibe sibeh û ew di nav ehlê xwe de di emniyetê de be, bedena wî jî sexlem be û qûtê roja wî pê re hebe weke ku nîmetê dinyayê (hemî) yê wî bin.*"

(T2346 Tirmizî, Zuhd, 34)

# PAQIJIYA DEV Û DINANAN

**1500.** Ji Ebû Eyyûb (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Çar tişt hene ji sinnetê pêxemberan e: Heyakirin, lixwedana bêhna xweş, bikaranîna sîwakê û zewac .*"

(T1080 Tirmizî, Nîkah, 1)



**1501.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Min di derheqê bikaranîna sîwakê (paqijiya dinanan) de zêde hûn şiyar kirin.(hûn pê zanin!)*"

(N6 Nesaî, Teharet, 6)



**1502.** Mîqdam bin Şureyh ji bavê xwe rîwayet kiriye ku gotiye: "Min ji Aîşe (r.) pirsî: 'Ma dema Resûlê Xwedê (s.) dihate malê pêşî dest bi çi dikir?' Aîşe (r.) got: "*Devê xwe sîwak dikir.*""

(M590 Muslim, Teharet, 43)



١٥٠٣- عَنْ زَيْدِ بْنِ خَالِدٍ الْجُهَنِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لَوْلاَ أَنْ أَشُقَّ عَلَى أُمَّتِى لأَمَرْتُهُمْ بِالسِّوَاكِ عِنْدَ كُلِّ صَلاَةٍ."



١٥٠٤- عَبْدُ الرَّحْمَنِ بْنُ أَبِى عَتِيقٍ قَالَ: حَدَّثَنِى أَبِى قَالَ سَمِعْتُ عَائِشَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "السِّوَاكُ مَطْهَرَةٌ لِلْفَمِ مَرْضَاةٌ لِلرَّبِّ."

# GUHDANA BEDENÊ Û PAQIJIYA WÊ
## HEQÊ BEDENA TE LI SER TE HEYE!

١٥٠٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّ اللَّهَ طَيِّبٌ لاَ يَقْبَلُ إِلاَّ طَيِّبًا..."



١٥٠٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "حَقٌّ لِلَّهِ عَلَى كُلِّ مُسْلِمٍ أَنْ يَغْتَسِلَ فِى كُلِّ سَبْعَةِ أَيَّامٍ يَغْسِلُ رَأْسَهُ وَجَسَدَهُ."



١٥٠٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ كَانَ لَهُ شَعْرٌ فَلْيُكْرِمْهُ."



**1503.** Zeyd bin Xalid el-Cuhenî ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Heke ne ji wê tirsa bûya ku zehmetiyê bidime ummeta xwe, min ê di wextê her nimêjê de emrê wan kiriba ku devê sîwak bikin."*

(D47 Ebû Dawûd, Teharet, 25; T23 Tirmizî, Teharet, 18)



**1504.** Ebdurrehman bin Ebî 'Etîq gotiye: "Bavê min ji Aîşe (r.) bihîstiye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sîwak dev paqij dike û Xwedê razî dike."*

(N5 Nesaî, Teharet, 5)

# GUHDANA BEDENÊ Û PAQIJIYA WÊ
## HEQÊ BEDENA TE LI SER TE HEYE!

**1505.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Gelî mirovan! Bêguman Xwedê paqij e, tişta ne paqij be qebûl nake..."*

(M2346 Muslim, Zekat, 65)



**1506.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heqê Xwedê Teala li ser her Misilmanî heye ku di her heft rojan de rojek serê xwe û bedena xwe bişo."*

(M1963 Muslim, Cum'a, 9; B897 Buxarî, Cum'a, 12)



**1507.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê pora wî hebe bila baş lê guhdan bike."*

(D4163 Ebû Dawûd, Tereccul, 3)



١٥٠٨- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ ﷺ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "الْفِطْرَةُ خَمْسٌ: الْخِتَانُ، وَالْإِسْتِحْدَادُ، وَنَتْفُ الْإِبْطِ، وَقَصُّ الشَّارِبِ، وَتَقْلِيمُ الْأَظْفَارِ."



١٥٠٩- عَنْ أَبِي بَرْزَةَ الأَسْلَمِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَزُولُ قَدَمَا عَبْدٍ [يَوْمَ الْقِيَامَةِ] حَتَّى يُسْأَلَ عَنْ عُمْرِهِ فِيمَا أَفْنَاهُ وَعَنْ عِلْمِهِ فِيمَا فَعَلَ وَعَنْ مَالِهِ مِنْ أَيْنَ اكْتَسَبَهُ وَفِيمَا أَنْفَقَهُ وَعَنْ جِسْمِهِ فِيمَا أَبْلاَهُ."

# XEW
## WEKE MIRINÊ

١٥١٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ أَبِي قَتَادَةَ، عَنْ أَبِيهِ قَالَ: ... قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ قَبَضَ أَرْوَاحَكُمْ حِينَ شَاءَ فَرَدَّهَا حِينَ شَاءَ..."



١٥١١- عَنْ عَمْرِو بْنِ عُثْمَانَ بْنِ عَفَّانَ، عَنْ أَبِيهِ، قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الصُّبْحَةُ تَمْنَعُ الرِّزْقَ."



١٥١٢- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "قَالَتْ أُمُّ سُلَيْمَانَ بْنِ دَاوُدَ لِسُلَيْمَانَ: يَا بُنَيَّ! لاَ تُكْثِرِ النَّوْمَ بِاللَّيْلِ. فَإِنَّ كَثْرَةَ النَّوْمِ بِاللَّيْلِ تَتْرُكُ الرَّجُلَ فَقِيرًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



**1508.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Tiştên ji fitretê pênc in: Sinnetbûn, paqijkirina mûyên navran, rakirina mûyên binçeng, sinbêlqutkirin û neynûkbirîn."*

(B6297 Buxarî, İsti'zan, 51; M597 Muslim, Teharet, 49)



**1509.** Ji Ebû Berze el-Eslemî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta ebdek (Roja Qiyametê) ji umrê xwe neyê pirsîn ka di çi de derbas kiriye, ji ilmê xwe ka pê çi kiriye, ji malê xwe ka ji kû bidest kiriye û di çi de mezixandiye û ji bedena xwe ka di çi de pîr kiriye ji cihê xwe nalepite."*

(T2417 Tirmizî, Sifetu'l-qiyame, 1)

# XEW
## WEKE MIRINÊ

**1510.** Ebdullah bin Ebî Qetade ji bavê xwe rîwayet kiriye ku gotiye: "(Di seferekî de em tev mabûn di xewê de) Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *"Xwedê Ezze we Celle dema xwest (bi xewê) rihê we sitand û dema xwest (bi hişyar kirinê) rihê we zivirand..."*

(N847 Nesaî, Îmamet, 47)



**1511.** 'Emr bin Osman bin 'Effan ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xewa sibihê dibe sebebê kêmbûna rizq."*

(HM530 Ibn Hanbel, I, 73)



**1512.** Ji Cabir bin Ebdîllah (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dayîka Suleyman bin Dawûd ji Suleyman re got: 'Kurkê min! Şevê zêde neraze. Lewra zêde razana şevê mirovî Roja Qiyametê feqîr dihêle.'"*

(İM1332 Ibn Maceh, Îqametu's-salawat, 174)



١٥١٣- عَنْ أَبِى بَرْزَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَكْرَهُ النَّوْمَ قَبْلَ الْعِشَاءِ وَالْحَدِيثَ بَعْدَهَا.



١٥١٤- عَنِ الْبَرَاءِ بْنِ عَازِبٍ قَالَ: قَالَ لي النَّبِيُّ ﷺ : "إِذَا أَتَيْتَ مَضْجَعَكَ فَتَوَضَّأْ وُضُوءَكَ لِلصَّلاَةِ، ثُمَّ اضْطَجِعْ عَلَى شِقِّكَ الأَيْمَنِ، ثُمَّ قُلِ: اللَّهُمَّ أَسْلَمْتُ وَجْهِى إِلَيْكَ، وَفَوَّضْتُ أَمْرِى إِلَيْكَ، وَأَلْجَأْتُ ظَهْرِى إِلَيْكَ رَغْبَةً وَرَهْبَةً إِلَيْكَ، لاَ مَلْجَأَ وَلاَ مَنْجَا مِنْكَ إِلاَّ إِلَيْكَ، اللَّهُمَّ آمَنْتُ بِكِتَابِكَ الَّذِى أَنْزَلْتَ وَبِنَبِيِّكَ الَّذِى أَرْسَلْتَ، فَإِنْ مُتَّ مِنْ لَيْلَتِكَ، فَأَنْتَ عَلَى الْفِطْرَةِ، وَاجْعَلْهُنَّ آخِرَ مَا تَتَكَلَّمُ بِهِ."

# ADABÊ LIXWEKIRIN Û XEMILANDINÊ
## LIXWEKIRINA CILÊ TEQWAYÊ

١٥١٥- عَنْ عَمْرِو بْنِ شُعَيْبٍ عَنْ أَبِيهِ عَنْ جَدِّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ أَنْ يُرَى أَثَرُ نِعْمَتِهِ عَلَى عَبْدِهِ."



١٥١٦- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ قَالَ: ذَكَرَ أَصْحَابُ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ يَوْمًا عِنْدَهُ الدُّنْيَا فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَلاَ تَسْمَعُونَ؟ أَلاَ تَسْمَعُونَ؟ إِنَّ الْبَذَاذَةَ مِنَ الإِيمَانِ إِنَّ الْبَذَاذَةَ مِنَ الإِيمَانِ."



**1513.** Ebû Berze (r.) gotiye: "Resûlê Xwedê (s.) xewa berî işayê û axaftina piştî işayê xweş nedidît."

(B568 Buxarî, Mewaqîtu's-Salat, 23)



**1514.** Ji Berra' bin 'Azîb (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) jê re gotiye: *"Dema te xwest tu razî weke ku tu ji bo nimêjê destnimêj digirî destnimêj bigire, piştre xwe ser tenişta rastê dirêj bike, piştre jî bêje: 'Xwedayê min! Min xwe teslîmê te kir. Min karê xwe hişte hêviya te. Bi hêvîdarî û bi tirs min pala xwe da te. Sipartina ji te cardî xwe sipartina te ye. Xilasiya ji te cardî xwe girtina bi te ye. Xwedayê min! Min bawerî bi Kîtaba te nazilkirî û bi pêxemberê te şiyandî aniye.' Heke tu di wê şevê de bimirî, tu yê li ser fitret bimirî. Vêca (berî tu razî) bila gotinên te yê dawî ev bin."*

(B247 Buxarî, Wudû', 75)

# ADABÊ LIXWEKIRIN Û XEMILANDINÊ
## LIXWEKIRINA CILÊ TEQWAYÊ

**1515.** 'Emr bin Şueyb (r.) bi rêya bavê xwe ji kalkê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bêguman Xwedê dixwaze elametên/eserên nîmetên Wî li ser ebdên Wî werine xuyakirin."*

(T2819 Tirmizî, Edeb, 54; HM20176 Ibn Hanbel, IV, 438)



**1516.** Ji Ebû Umame (r.) hatiye rîwayet kirin ku sehabiyan rojekî li cem Resûlê Xwedê (s.) behsa nîmetên dinyayê kirin. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ma hûn seh nakin, ma hûn seh nakin? Sadetî ji îmanê ye, sadetî ji îmanê ye."*

(D4161 Ebû Dawûd, Tereccul, 1)



١٥١٧- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لا يَنْظُرُ اللَّهُ تَعَالَى إِلَى مَنْ جَرَّ ثَوْبَهُ خُيَلَاءَ."



١٥١٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِي قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ." قَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُهُ حَسَنًا وَنَعْلُهُ حَسَنَةً. قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ، الْكِبْرُ: بَطَرُ الْحَقِّ وَغَمْطُ النَّاس."



١٥١٩- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا اسْتَجَدَّ ثَوْبًا سَمَّاهُ بِاسْمِهِ عِمَامَةً أَوْ قَمِيصًا أَوْ رِدَاءً ثُمَّ يَقُولُ: "اللَّهُمَّ لَكَ الْحَمْدُ، أَنْتَ كَسَوْتَنِيهِ، أَسْأَلُكَ خَيْرَهُ وَخَيْرَ مَا صُنِعَ لَهُ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّهِ وَشَرِّ مَا صُنِعَ لَهُ."

# HENEK PEVKIRIN Û ŞAHÎ
## RÊYÊN BÊHNBERDANÊ

١٥٢٠- عَنْ حَنْظَلَةَ الْكَاتِبِ التَّمِيمِيِّ الْأُسَيِّدِيِّ قَالَ: كُنَّا عِنْدَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ ... فَقَالَ "يَاحَنْظَلَةُ! لَوْ كُنْتُمْ كَمَا تَكُونُونَ عِنْدِى لَصَافَحَتْكُمُ الْمَلَائِكَةُ عَلَى فُرُشِكُمْ أَوْ عَلَى طُرُقِكُمْ. يَا حَنْظَلَةُ سَاعَةٌ وَسَاعَةٌ."



**1517.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Teala (bi nezera rehmê) li wî kesê ji bitrî cilê xwe dirêj dike heta bi erdê ve bixirihê meyze nake."*

(M5453 Muslim, Libas we zînet, 42; B5783 Buxarî, Libas, 1)



**1518.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di dilê wî de misqala zerre kibir hebe naçê cennetê."* Vêca zilameki got: 'Bêguman mirov hez dike ku cil û bergên wî û pêlava wî xweşik be.' Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bêguman Xwedê xweşik e hez ji xweşikahiyê dike. Kibir redkirina heqiyê ye û piçûkdîtina mirovan e."*

(M265 Muslim, Îman, 147)



**1519.** Ebû Seîd (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) cilek nû li xwe dikir, şaşik, gumlek an rîda her çibûya nav dida û piştre digot: *"Xwedayê min! Hemd ji te re be. Te ev li min kir. Ez ji te xêra vî cilî û di xêrê de lixwekirina wî dixwazim. Ji şerrê wî û ji lixwekirina wî di şerrê de jî xwe dispêrime te."*

(T1767 Tirmizî, Libas, 29; D4020 Ebû Dawûd, Libas, 1)

# HENEK PEVKIRIN Û ŞAHÎ
## RÊYÊN BÊHNBERDANÊ

**1520.** Ji katibê wehyê Henzele et-Temîmî el-Esedî (r.) hatiye ragihandin gotiye: "Em li cem Resûlê Xwedê (s.) bûn... Ewî wiha kerem kir: *"Ey Henzele! Heke we halê xwe yê dema hûn li cem min piştî hûn veqetihan jî dewam kiriba, wê melaîketan di malê we de an jî di rêyên we de merheba dabana we. Belê ey Henzele! Bêhnina wilo bêhnina halo.!"*

(İM4239 Ibn Maceh, Zuhd, 28)



١٥٢١- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ أَنَّهُ قَالَ: "إِنِّي لَا أَقُولُ إِلَّا حَقًّا." قَالَ بَعْضُ أَصْحَابِهِ: فَإِنَّكَ تُدَاعِبُنَا يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ فَقَالَ: "إِنِّي لَا أَقُولُ إِلَّا حَقًّا."



١٥٢٢- عَنْ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ أَبِى لَيْلَى قَالَ حَدَّثَنَا أَصْحَابُ مُحَمَّدٍ ﷺ ... فَقَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لاَ يَحِلُّ لِمُسْلِمٍ أَنْ يُرَوِّعَ مُسْلِمًا."



١٥٢٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لاَ سَبَقَ إِلاَّ فِى نَصْلٍ أَوْ حَافِرٍ أَوْ خُفٍّ."



١٥٢٤- عَنْ عَائِشَةَ أَنَّهَا زَفَّتِ امْرَأَةً إِلَى رَجُلٍ مِنَ الأَنْصَارِ فَقَالَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ : "يَا عَائِشَةُ مَا كَانَ مَعَكُمْ لَهْوٌ فَإِنَّ الْأَنْصَارَ يُعْجِبُهُمُ اللَّهْوُ."



١٥٢٥- عَنْ عُقْبَةَ بْنِ عَامِرٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "... لَيْسَ مِنَ اللَّهْوِ إِلاَّ ثَلاَثٌ: تَأْدِيبُ الرَّجُلِ فَرَسَهُ وَمُلاَعَبَتُهُ أَهْلَهُ وَرَمْيُهُ بِقَوْسِهِ وَنَبْلِهِ..."

**1521.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez tenê rastiyê dibêjim."* Hinek sehabiyên wî gotin: "Ya Resûlê Xwedê! Tu carina bi me re henekan dikî!" got: *"Ez tenê rastiyê dibêjim."*

(HM8462 Ibn Hanbel, II, 341)



**1522.** Ebdurrehman bin Ebî Leyla ji hinek sehabiyên Pêxember (s.) bihîstiye ku (dema sehabiyekî bi henekî hevalê xwe tirsand) Resûlê Xwedê got: *"Ne helal e ku Misilmanek Misilmanek dîtir bitirsîne."*

(D5004 Ebû Dawûd, Edeb, 85)



**1523.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Pêşbazî tenê di tîravêtinê de, an di bazdandina hesp û devehan de tê kirin."*

(N3615 Nesaî, Hayl we sebq we remy, 14)



**1524.** Ji Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin ku wê pîrekek bi zilamek Ensarî re zewicand. Vêca Resûlê Xwedê jê re got: *"Ey Aîşe! Ma hûn şahiyê nakin? Ensarî hez ji şahiyê dikin."*

(B5162 Buxarî, Nîkah, 64)



**1525.** 'Uqbe bin 'Amir (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "... *Tenê sê cure şahî û leyîstik hene: Perwerdekirina mirovekî hespê xwe, keyf û şahîkirina bi xanima xwe re û avêtina bi tîr û kevan...*"

(D2513 Ebû Dawûd, Cîhad, 23)

# CEJN
## ROJÊN KEYFXWEŞÎ Û ŞAHIYÊ

١٥٢٦- عَنْ عَائِشَةَ قَالَتْ: دَخَلَ عَلَيَّ أَبُو بَكْرٍ وَعِنْدِى جَارِيَتَانِ مِنْ جَوَارِى الأَنْصَارِ تُغَنِّيَانِ بِمَا تَقَاوَلَتْ بِهِ الأَنْصَارُ يَوْمَ بُعَاثٍ قَالَتْ وَلَيْسَتَا بِمُغَنِّيَتَيْنِ. فَقَالَ أَبُو بَكْرٍ: أَبِمُزْمُورِ الشَّيْطَانِ فِى بَيْتِ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ وَذَلِكَ فِى يَوْمِ عِيدٍ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يَا أَبَا بَكْرٍ إِنَّ لِكُلِّ قَوْمٍ عِيدًا وَهَذَا عِيدُنَا."



١٥٢٧- عَنْ أَنَسٍ قَالَ: قَدِمَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ الْمَدِينَةَ وَلَهُمْ يَوْمَانِ يَلْعَبُونَ فِيهِمَا فَقَالَ: "مَا هَذَانِ الْيَوْمَانِ؟" قَالُوا: كُنَّا نَلْعَبُ فِيهِمَا فِى الْجَاهِلِيَّةِ. فَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ اللَّهَ قَدْ أَبْدَلَكُمْ بِهِمَا خَيْرًا مِنْهُمَا يَوْمَ الأَضْحَى وَيَوْمَ الْفِطْرِ."



١٥٢٨- عَنِ الْبَرَاءِ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَخْطُبُ فَقَالَ: "إِنَّ أَوَّلَ مَا نَبْدَأُ بِهِ فِي يَوْمِنَا هَذَا أَنْ نُصَلِّيَ، ثُمَّ نَرْجِعَ فَنَنْحَرَ، فَمَنْ فَعَلَ فَقَدْ أَصَابَ سُنَّتَنَا."



# CEJN
## ROJÊN KEYFXWEŞÎ Û ŞAHIYÊ

**1526.** Hz. Aîşe (r.) gotiye: "Ebû Bekir hate cem min û li cem min du qîzikên Ensarî hebûn stiranên Ensariyan yên ku di roja Buasê de dihatine gotin didîlandin. Ew herdu qîz jî ne stranbêj bûn. Vêca Ebû Bekir (r.) got: "Ev çi mezmûra şeytên e di mala Resûlê Xwedê de? Ev hadîse roja eydê qewimîbû. Li ser vê yekê Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ey Ebû Bekir her miletek eydeka wan heye, ev roj jî eyda me ye."*

(M2061 Muslim, Salatu'l-'îdeyn, 16; B952 Buxarî, 'Îdeyn, 3)



**1527.** Enes bin Malik (r.) gotiye: "Di Dewra Cahiliyetê de her sal du roj hebûn mirovan di wan de cejn û şahî dikirin. Dema Resûlê Xwedê (s.) hate Medînê got: *'Du rojê hewe hebûn we di wan de keyf û şahî dikir. Xwedê ew herdu roj bi du rojên xêrtir guherandiye. Ew jî roja Eyda Remezanê û roja Eyda Qurbanê ye.'"*

(D1134 Ebû Dawûd, Salat, 239)



**1528.** Ji Berra' (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst di xutbê de digot: *"Emê îro pêşî dest bi nimêja eydê bikin, piştre em ê biziviri û qurbana xwe ser jê kin. Kesê bi vî awayî bike ewî xwe bi sinneta me girtiye."*

(B951 Buxarî, 'Îdeyn, 3)



١٥٢٩- عَنْ أَبِى عُبَيْدٍ مَوْلَى ابْنِ أَزْهَرَ أَنَّهُ قَالَ شَهِدْتُ الْعِيدَ مَعَ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ ﵁ فَجَاءَ فَصَلَّى ثُمَّ انْصَرَفَ فَخَطَبَ النَّاسَ فَقَالَ: إِنَّ هَذَيْنِ يَوْمَيْنِ نَهَى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ صِيَامِهِمَا يَوْمُ فِطْرِكُمْ مِنْ صِيَامِكُمْ وَالآخَرُ يَوْمٌ تَأْكُلُونَ فِيهِ مِنْ نُسُكِكُمْ.



١٥٣٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "الصَّوْمُ يَوْمَ تَصُومُونَ وَالْفِطْرُ يَوْمَ تُفْطِرُونَ وَالأَضْحَى يَوْمَ تُضَحُّونَ."

# RÊWÎTÎ
## DI DINYAYÊ DE WEK RÊWIYEKÎ BE

١٥٣١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ يَبْلُغُ بِهِ النَّبِيَّ ﷺ : "لاَ تُشَدُّ الرِّحَالُ إِلاَّ إِلَى ثَلاَثَةِ مَسَاجِدَ: مَسْجِدِى هَذَا، وَمَسْجِدِ الْحَرَامِ وَمَسْجِدِ الأَقْصَى."



١٥٣٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ ﵁ عَنْ النَّبِيِّ ﷺ قَال: "السَّفَرُ قِطْعَةٌ مِنَ الْعَذَابِ، يَمْنَعُ أَحَدَكُمْ طَعَامَهُ وَشَرَابَهُ وَنَوْمَهُ، فَإِذَا قَضَى نَهْمَتَهُ فَلْيُعَجِّلْ إِلَى أَهْلِه."



**1529.** Ji kolê Ibn Ezher yê azadkirî Ebû Ubeyde hatiye rîwayetkirin gotiye: "Ez eydekî digel Umer bin el-Xettab (r.) bûm. Vêca Umer (r.) hat, pêşiya cemaetê nimêjkir, piştre jî rabû xutbeyek xwend û got: 'Resûlê Xwedê (s.) rojîgirtina di van herdu rojan de heram kiriye: Roja eyda piştî rojiya Remezanê û roja hûn qurbanê xwe ser jê dikin û hûn dixwin.'"

(M2671 Muslim, Siyam, 138; B1990 Buxarî, Sawm, 66)



**1530.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Remezan ew e ku hûn wê rojê dest bi rojiyê dikin. Eyda Remezanê ew e ku roja hûn rojiyê bi dawî dikin. Eyda Qurbanê ew e ku wê roja hûn qurbanan ser jê dikin."*

(T697 Tirmizî, Sawm, 11)

# RÊWÎTÎ
## DI DINYAYÊ DE WEK RÊWIYEKÎ BE

**1531.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Bi niyeta îbadetê) ji bilî van sê mizgeftan rêwîtî nayê kirin: Mizgefta min ev, Mescîdu'l-Heram û Mescîdu'l-Eqsa."*

(M3384 Muslim, Hac, 511)



**1532.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Sefer cureyek îşkence ye ku we ji xwarina we, ji vexwarina we û ji xewa we dike. Bo vê yekê dema rêwî kar û barê xwe temam kir bila bi lez vegere nav ehlê xwe."*

(B1804 Buxarî, Umre, 19; B5429 Buxarî, Et'ime, 30)



١٥٣٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ؛ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "ثَلاَثُ دَعَوَاتٍ مُسْتَجَابَاتٌ لاَ شَكَّ فِيهِنَّ: دَعْوَةُ الْوَالِدِ، وَدَعْوَةُ الْمُسَافِرِ، وَدَعْوَةُ الْمَظْلُوم."



١٥٣٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَال: "إِذَا كَانَ ثَلاَثَةٌ فِى سَفَرٍ فَلْيُؤَمِّرُوا أَحَدَهُمْ."



١٥٣٥- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ [بْنِ عُمَرَ] قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا سَافَرَ فَأَقْبَلَ اللَّيْلُ قَالَ: "يَا أَرْضُ! رَبِّى وَرَبُّكِ اللَّهُ، أَعُوذُ بِاللَّهِ مِنْ شَرِّكِ وَشَرِّ مَا فِيكِ وَشَرِّ مَا خُلِقَ فِيكِ، وَمِنْ شَرِّ مَا يَدِبُّ عَلَيْكِ، وَأَعُوذُ بِاللَّهِ مِنْ أَسَدٍ وَأَسْوَدَ، وَمِنَ الْحَيَّةِ وَالْعَقْرَبِ، وَمِنْ سَاكِنِ الْبَلَدِ، وَمِنْ وَالِدٍ وَمَا وَلَدَ."

# RESM Û HEYKEL
## HUNERÊ WÊNE

١٥٣٦- عَنِ النَّضْرِ بْنِ أَنَسٍ قَالَ: كُنْتُ جَالِسًا عِنْدَ ابْنِ عَبَّاسٍ أَتَاهُ رَجُلٌ مِنْ أَهْلِ الْعِرَاقِ فَقَالَ: إِنِّى أُصَوِّرُ هَذِهِ التَّصَاوِيرَ فَمَا تَقُولُ فِيهَا؟ فَقَالَ: ادْنُهْ ادْنُهْ، سَمِعْتُ مُحَمَّدًا ﷺ يَقُولُ: "مَنْ صَوَّرَ صُورَةً فِى الدُّنْيَا كُلِّفَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ أَنْ يَنْفُخَ فِيهَا الرُّوحَ وَلَيْسَ بِنَافِخِهِ."



**1533.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Duayên sê kesan bêguman têne qebûlkirin: Dua bavê, dua rêwiyî û dua mezlûmî."*

(D1536 Ebû Dawûd, Tefrî'u ebwabi'l-witr, 29; T1905 Tirmizî, Birr we sile, 7)



**1534.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema sê kes bi hev re derketin seferê bila yekî ji xwe serok bibijêrin."*

(D2609 Ebû Dawûd, Cîhad, 80)



**1535.** Ebdullah bin Umer (r.) gotiye: "Dema di seferê de li Resûlê Xwedê (s.) dibû şev digot: *'Ey erdê! Rebbê min û Rebbê te Ellah e. Ez ji şerrê te, ji şerrê tiştên di te de, ji şerrê tiştên di te de hatine afirandin û ji şerrê yên li ser te hereket dikin û digerin xwe dispêrime Xwedê. Ez ji şerrê şêr, marê reş, mar, dûpişk, ji şerrê yên li vir dijîn (cin), ji şerrê yê diwelidêne û yê diwelidê xwe dispêrime te.'*

(D2603 Ebû Dawûd, Cîhad, 75)

# RESM Û HEYKEL
## HUNERÊ WÊNE

**1536.** Nedr bin Enes gotiye: "Ez li cem Ibn Ebbas (r.) rûniştîbûm. Zilamekî Iraqî hate cem û got: 'Ez van resman çêdikim, tu di derheqê wan de çi dibêjî?' Got: 'Nêzîk bibe, nêzîk bibe.' Min ji Muhemmed (s.) bihîst digot: *'Kesê di dinyayê de (bi qesda were hebandin) resmekî çêke, wê Roja Qiyametê jê were xwestin ku rih bêxiyê, belê wê nekaribe.'"*

(N5360 Nesaî, Zînet, 113)



١٥٣٧- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَشَدَّ النَّاسِ عَذَابًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ الْمُصَوِّرُونَ."



١٥٣٨- عَنْ عِمْرَانَ بْنِ حِطَّانَ: أَنَّ عَائِشَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهَا حَدَّثَتْهُ: أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ لَمْ يَكُنْ يَتْرُكُ فِى بَيْتِهِ شَيْئًا فِيهِ تَصَالِيبُ، إِلاَّ نَقَضَهُ.



١٥٣٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَدْخُلُ الْمَلاَئِكَةُ بَيْتًا فِيهِ تَمَاثِيلُ أَوْ تَصَاوِيرُ."



١٥٤٠- عَنْ أَبِى زُرْعَةَ قَالَ: دَخَلْتُ مَعَ أَبِى هُرَيْرَةَ فِى دَارِ مَرْوَانَ فَرَأَى فِيهَا تَصَاوِيرَ، فَقَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "قَالَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ: وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنْ ذَهَبَ يَخْلُقُ خَلْقًا كَخَلْقِى؟ فَلْيَخْلُقُوا ذَرَّةً، أَوْ لِيَخْلُقُوا حَبَّةً، أَوْ لِيَخْلُقُوا شَعِيرَةً."

# XWEŞIKTÎ Û HUNER
## TECELLIYA CEMALA ÎLAHÎ

١٥٤١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ مَنْ كَانَ فِى قَلْبِهِ مِثْقَالُ ذَرَّةٍ مِنْ كِبْرٍ." قَالَ رَجُلٌ: إِنَّ الرَّجُلَ يُحِبُّ أَنْ يَكُونَ ثَوْبُهُ حَسَنًا وَنَعْلُهُ حَسَنَةً. قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ جَمِيلٌ يُحِبُّ الْجَمَالَ، الْكِبْرُ: بَطَرُ الْحَقِّ وَغَمْطُ النَّاسِ."



**1537.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Roja Qiyametê kesê ezabê wan dijwartir in ew in ku (bi qesda were hebandin) resm/heykelan çêdikin."*

(M5537 Muslim, Libas ve zînet, 98; B5950 Buxarî, Libas, 89)



**1538.** Ji 'Imran bin Hittan hatiye ragihandin ku Hz. Aîşe (r.) jê re gotiye: *"Resûlê Xwedê (s.) di mala xwe de tiştekа ku li ser resmê xaçê heyî nedihişt mitleqa îmha dikir."*

(B5952 Buxarî, Libas, 90)



**1539.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Melaîket nakevin xaniyê tê de wêne an heykel heyî."*

(M5545 Muslim, Libas ve zînet, 102)



**1540.** Ebû Zur'e gotiye: "Ez digel Ebû Hureyre çûme mala Merwan. Dema Ebû Hureyre di xanî de suret dîtin wiha got: 'Min ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *'Xwedê Ezze we Celle gotiye: 'Ma ji kesê xwe li çêkirina tiştê min xuluqandîn diqewmîne zalimtir kî heye? (Heke karibin) bila mîroyekî, an hebek genim an jî hebek ce bixuluqînin.'*"

(M5543 Muslim, Libas we zînet, 101; B5953 Buxarî, Libas, 90)

# XWEŞIKTÎ Û HUNER
## TECELLIYA CEMALA ÎLAHÎ

**1541.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di dilê wî de misqala zerre kibir hebe naçê cennetê."* Vêca zilameki got: 'Bêguman mirov hez dike ku cil û bergên wî û pêlava wî xweşik be.' Resûlê Xwedê (s.) got: *"Bêguman Xwedê xweşik e hez ji xweşikahiyê dike. Kibir redkirina heqiyê ye û piçûkdîtina mirovan e."*

(M265 Muslim, Îman, 147)



١٠٤٢- أَبُو رَجَاءٍ الْعُطَارِدِيُّ قَالَ: خَرَجَ عَلَيْنَا عِمْرَانُ بْنُ حُصَيْنٍ وَعَلَيْهِ مِطْرَفٌ مِنْ خَزٍّ لَمْ نَرَهُ عَلَيْهِ قَبْلَ ذَلِكَ وَلَا بَعْدَهُ فَقَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَنْعَمَ اللَّهُ عَزَّ وَجَلَّ عَلَيْهِ نِعْمَةً فَإِنَّ اللَّهَ عَزَّ وَجَلَّ يُحِبُّ أَنْ يُرَى أَثَرُ نِعْمَتِهِ عَلَى خَلْقِهِ."



١٠٤٣- عَنْ شَدَّادِ بْنِ أَوْسٍ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ اللَّهَ كَتَبَ الْإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ..."



١٠٤٤- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ كَانَ يَقُولُ: "اَللَّهُمَّ أَحْسَنْتَ خَلْقِي فَأَحْسِنْ خُلُقِي."

**1542.** Ebû Reca' el-'Utaridî gotiye: "Imran bin Husayn hate cem me û li ser wî şaleke hevrûşim ê xemilandî hebû. Me ew şal ne berî hingî ne jî piştre li ser nedîtibû. Vêca got: 'Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *'Kesê ku Xwedê Ezze we Celle nî'met dabiyê, bêguman Xwedê dixwaze elametê/ eserê nîmetên Wî li ser ebdên Wî werine xuyakirin.*"

(HM20176 Ibn Hanbel, IV, 438)



**1543.** Ji Şeddad bin Ews (r.) hatiye ragihandin... ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "...*Xwedê di her kar û barî de îhsan (sipehî çêkirin) ferz kiriye...*"

(T1409 Tirmizî, Diyat, 14)



**1544.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Çewa te şiklê min xweşik afirandiye exlaqê min jî wisa xweşik bike."*

(HM3823 Ibn Hanbel, I, 403)

١٠٤٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ أَنَّهُ قَالَ: كُنْتُ مَعَ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَجَاءَهُ رَجُلٌ مِنَ الأَنْصَارِ فَسَلَّمَ عَلَى النَّبِيِّ ﷺ ثُمَّ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ أَيُّ الْمُؤْمِنِينَ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "أَحْسَنُهُمْ خُلُقًا." قَالَ: فَأَيُّ الْمُؤْمِنِينَ أَكْيَسُ؟ قَالَ: "أَكْثَرُهُمْ لِلْمَوْتِ ذِكْرًا وَأَحْسَنُهُمْ لِمَا بَعْدَهُ اسْتِعْدَادًا أُولَئِكَ الأَكْيَاسُ."



١٠٤٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَكْثِرُوا ذِكْرَ هَاذِمِ اللَّذَّاتِ."



١٠٤٧- عَنْ أَسْمَاءَ بِنْتِ عُمَيْسٍ الْخَثْعَمِيَّةِ قَالَتْ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "... بِئْسَ الْعَبْدُ عَبْدٌ سَهَى وَلَهَى وَنَسِيَ الْمَقَابِرَ وَالْبِلَى بِئْسَ الْعَبْدُ عَبْدٌ عَتَا وَطَغَى وَنَسِيَ الْمُبْتَدَا وَالْمُنْتَهَى..."



١٠٤٨- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَحَبَّ لِقَاءَ اللَّهِ أَحَبَّ اللَّهُ لِقَاءَهُ، وَمَنْ كَرِهَ لِقَاءَ اللَّهِ كَرِهَ اللَّهُ لِقَاءَهُ."



# MIRIN
## HER CAN WÊ MIRINÊ TAM BIKE

**1545.** Ibn Umer (r.) gotiye: "Ez digel Resûlê Xwedê (s.) bûm. Zilamek Ensarî hat û silam da Pêxember (s.) piştre jî got: 'Ya Resûlê Xwedê! Ji muminan kîjan baştir e?' Pêxember (s.) got: '*Yên exlaqê wan baştir.*' Piştre got: 'Ji muminan kîjan aqilmendtir e?' Resûlê Xwedê (s.) got: '*Yên zehftir mirin li bîra wan in û yên ji bo piştî mirinê baştir haziriyê dikin. Iha yên aqilmedtir ew in.*"

(İM4259 Ibn Maceh, Zuhd, 31)



**1546.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Wê tişta ku lezzetê mehw dike (ku mirin e) zêde bi bîr bînin.*"

(N1825 Nesaî, Cena'iz, 3)



**1547.** Ji Esma bint 'Umeys el-Xes'emiyye (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: "*... Ew ebdê xafil bûyî û ketî nav leyîstikê û tirb û rizîbûna di tirbê de ji bîr kirî çi bedbext e! Ew ebdê zêdegavî kiriye û ji hed derketiye û ji bîr kiriye ka ji ku hatiye û wê bi ku ve here çi bedbext e!...*"

(T2448 Tirmizî, Sıfaü'l-qiyame, 17)



**1548.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: "*Kî bixwazê bigihe Xwedê, Xweda jî hez dike bigihe wî, kî nexwaze bigihe Xwedê Xweda jî naxwaze bigihê wî.*"

(B6507 Buxarî, Riqaq, 41)



١٠٤٩- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ ﷺ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لاَ يَتَمَنَّيَنَّ أَحَدُكُمُ الْمَوْتَ مِنْ ضُرٍّ أَصَابَهُ، فَإِنْ كَانَ لاَ بُدَّ فَاعِلاً فَلْيَقُلِ اللَّهُمَّ أَحْيِنِى مَا كَانَتِ الْحَيَاةُ خَيْرًا لِى، وَتَوَفَّنِى إِذَا كَانَتِ الْوَفَاةُ خَيْرًا لِى."



١٠٥٠- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لَقِّنُوا مَوْتَاكُمْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ."

# MERASIMA CENAZE
## JI RÊWIYÊ AXÎRETÊ RE WEZÎFA DAWÎ

١٠٥١- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لَيْسَ مِنَّا مَنْ لَطَمَ الْخُدُودَ، وَشَقَّ الْجُيُوبَ، وَدَعَا بِدَعْوَى الْجَاهِلِيَّةِ."



١٠٥٢- عَنْ عَلِيٍّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "مَنْ غَسَّلَ مَيِّتًا وَكَفَّنَهُ وَحَنَّطَهُ وَحَمَلَهُ وَصَلَّى عَلَيْهِ وَلَمْ يُفْشِ عَلَيْهِ مَا رَأَى خَرَجَ مِنْ خَطِيئَتِهِ مِثْلَ يَوْمِ وَلَدَتْهُ أُمُّهُ."



**1549.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Bila tu kes ji hewe ji ber musîbeteka ku hatî serê wî mirinê nexwaze. Heke mitleqa lazim e bixwaze, bila wiha bêje: 'Xwedayê min! Heta heyat ji min re xêrtir e heyata min îdame bike û heke mirin ji min re xêrtir be rihê min bistîne."*

(B5671 Buxarî, Merda, 19)



**1550.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"(Gotina )'La îlahe îllellah' telqînê kesên li ber sekeratan de be bikin."*

(M2125 Muslim, Cena'iz, 2)

# MERASIMA CENAZE
## JI RÊWIYÊ AXÎRETÊ RE WEZÎFA DAWÎ

**1551.** Ji Ebdîllah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê (şîna miriyan) bi lêdana lemika, bi cilqetandinê û bi feryad û fîxankirina dewra cahiliyetê bigire ne ji me ye."*

(B1294 Buxarî, Cena'iz, 35)



**1552.** Ji Elî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê miriyekî bişû, kefen bike, bêhna xweş li kefenê wî bike, cenazê wî hilgire, li ser nimêj bike û eybên li ser dîtî îfşa neke wê mîna roja jidayîkbûyî ji gunehên xwe paqij bibe."*

(İM1462 Ibn Maceh, Cena'iz, 8)



١٥٥٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "إِذَا صَلَّيْتُمْ عَلَى الْمَيِّتِ فَأَخْلِصُوا لَهُ الدُّعَاءَ."



١٥٥٤- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ جَعْفَرٍ قَالَ: لَمَّا جَاءَ نَعْيُ جَعْفَرٍ قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "اصْنَعُوا لأَهْلِ جَعْفَرٍ طَعَامًا فَإِنَّهُ قَدْ جَاءَهُمْ مَا يَشْغَلُهُمْ."



١٥٥٥- عَنِ ابْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اذْكُرُوا مَحَاسِنَ مَوْتَاكُمْ وَكُفُّوا عَنْ مَسَاوِيهِمْ."



١٥٥٦- عَنْ سَعْدِ بْنِ عُبَادَةَ قَالَ قُلْتُ يَا رَسُولَ اللَّهِ! إِنَّ أُمِّى مَاتَتْ أَفَأَتَصَدَّقُ عَنْهَا؟ قَالَ: "نَعَمْ." قُلْتُ: فَأَيُّ الصَّدَقَةِ أَفْضَلُ؟ قَالَ: "سَقْيُ الْمَاءِ."

# TIRB
## DERIYÊ EBEDIYETÊ

١٥٥٧- عن هَانِئٍ مَوْلَى عُثْمَانَ قَالَ: كَانَ عُثْمَانُ بْنُ عَفَّانَ إِذَا وَقَفَ عَلَى قَبْرٍ يَبْكِى. حَتَّى يَبُلَّ لِحْيَتَهُ. فَقِيلَ لَهُ: تَذْكُرُ الْجَنَّةَ وَالنَّارَ وَلاَ تَبْكِى. وَتَبْكِى مِنْ هَذَا؟ قَالَ: إِنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الْقَبْرَ أَوَّلُ مَنَازِلِ الآخِرَةِ. فَإِنْ نَجَا مِنْهُ فَمَا بَعْدَهُ أَيْسَرُ مِنْهُ. وَإِنْ لَمْ يَنْجُ مِنْهُ، فَمَا بَعْدَهُ أَشَدُّ مِنْهُ."



**1553.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema we li ser cenaze nimêj kir, ji mirî re duayên semîmî bikin."*

(D3199 Ebû Dawûd, Cena'iz, 54, 56; İM1497 Ibn Maceh, Cena'iz, 23)



**1554.** Ji Ebdîllah bin Ce'fer (r.) hatiye ragihandin ku dema xebera mirina Ce'fer hat, Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ji malbata Ce'fer re xwarinê çêkin. Lewra musîbeteka ku wan meşxûl dike hatiye serê wan."*

(T998 Tirmizî, Cena'iz, 21)



**1555.** Ji Ibn Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Behsa qenciyê miriyên xwe bikin û behsa xirabiyên wan nekin."*

(D4900 Ebû Dawûd, Edeb, 42; T1019 Tirmizî, Cena'iz, 34)



**1556.** Se'd bin 'Ubade (r.) gotiye: "Min got: 'Ya Resûlê Xwedê! Dayîka min wefat kiriye. Ma ez karim ji dêl wê ve sedeqeyan bidim?' Got: *'Erê.'* Min got: 'Kîjan sedeqe baştir e?' Got: *'Îkramkirina avê.'*"

(N3694 Nesaî, Wesaya, 9)

# TIRB
## DERIYÊ EBEDIYETÊ

**1557.** Ji kolê Hz. Osman yê azadkirî Hanî' hatiye rîwayetkirin ku dema Osman bin 'Effan (r.) li ber tirbekî disekinî digirî heta riha wî şil dibû. Jê re hate gotin: "Tu cennet û cehnemê difikirî tu nagirî, ma tu çewa ji vê digirî?" Got: "Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di rêyê axîretê de tirb warê yekem e' Heke mirov ji wê (bi silemetî) xilas bibe yên piştî wê tên hêsantir in. Vêca heke (bi silemetî) jê xilas nebe yên piştî wê tên dijwartir in."*"

(İM4267 Ibn Maceh, Zuhd, 32; T2308 Tirmizî, Zuhd, 5)



١٥٥٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ أَحَدَكُمْ إِذَا مَاتَ عُرِضَ عَلَيْهِ مَقْعَدُهُ بِالْغَدَاةِ وَالْعَشِيِّ، إِنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الْجَنَّةِ فَمِنْ أَهْلِ الْجَنَّةِ، وَإِنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ النَّارِ فَمِنْ أَهْلِ النَّارِ، فَيُقَالُ هَذَا مَقْعَدُكَ حَتَّى يَبْعَثَكَ اللَّهُ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ."



١٥٥٩- أَنَسُ بْنُ مَالِكٍ قَالَ: قَالَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ الْعَبْدَ إِذَا وُضِعَ فِي قَبْرِهِ وَتَوَلَّى عَنْهُ أَصْحَابُهُ إِنَّهُ لَيَسْمَعُ قَرْعَ نِعَالِهِمْ." قَالَ: "يَأْتِيهِ مَلَكَانِ فَيُقْعِدَانِهِ فَيَقُولاَنِ لَهُ: مَا كُنْتَ تَقُولُ فِي هَذَا الرَّجُلِ؟" قَالَ: "فَأَمَّا الْمُؤْمِنُ فَيَقُولُ: أَشْهَدُ أَنَّهُ عَبْدُ اللَّهِ وَرَسُولُهُ." قَالَ: "فَيُقَالُ لَهُ: "انْظُرْ إِلَى مَقْعَدِكَ مِنَ النَّارِ قَدْ أَبْدَلَكَ اللَّهُ بِهِ مَقْعَدًا مِنَ الْجَنَّةِ." قَالَ نَبِيُّ اللَّهِ ﷺ : "فَيَرَاهُمَا جَمِيعًا."



١٥٦٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يَدْعُو: "اَللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، وَمِنْ عَذَابِ النَّارِ، وَمِنْ فِتْنَةِ الْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ، وَمِنْ فِتْنَةِ الْمَسِيحِ الدَّجَّالِ."

# ZIYARETA TIRBA
## SELAM, DUA Û IBRET

١٥٦١- عَنْ سُلَيْمَانَ بْنِ بُرَيْدَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: "كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ يُعَلِّمُهُمْ إِذَا خَرَجُوا إِلَى الْمَقَابِرِ... السَّلاَمُ عَلَيْكُمْ أَهْلَ الدِّيَارِ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُسْلِمِينَ وَإِنَّا إِنْ شَاءَ اللَّهُ لَلاَحِقُونَ أَسْأَلُ اللَّهَ لَنَا وَلَكُمُ الْعَافِيَةَ."



**1558.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema yek ji hewe mir, cihê ku wê lê bi cih bibe, sibih û êvaran şanî wî tê dan. Heke ji ehlê cennetê be ew ji ehlê cennetê ye û heke ji ehlê cehnemê be ew ji ehlê cehnemê ye. Vêca jê re tê gotin: 'Iha cihê ku tu lê bi cih bibî ev der e. Di dawiyê de wê Xwedê Roja Qiyametê te bişîne vir.'"*

(B1379 Buxarî, Cena'iz, 89)



**1559.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Dema ebdek tê danîn di tirbê de û eqrebayên wî ew hiştin û zivirîn, mirî dengê lingên wan dike. Piştre du melaîket têne cemê, ewî dirûnihênin û jê dipirsin: 'Ma te di derheqê vî zilamî (Pêxember) de çi digot?' Heke ew ebd mumin be wê vê bersivê bide: 'Ez şehde didim ku ew ebdê Xwedê û resûlê wi ye.' Vêca jê re tê gotin: 'Li cihê xwe yê cehnemê de binêre! Xwedê şûna wî cihî di cennetê de cihek daye te.'* Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ew mirov van herdu cihên xwe di heman demê de dibîne."*

(M7216 Muslim, Cennet we sıfatu ne'îmiha we ehliha, 70)



**1560.** Ebû Hureyre (r.) dibêje: "Resûlê Xwedê (s.) ev dua dikir: *'Xwedayê min! Ez ji ezabê qebrê, ji ezabê cehnemê, ji fitna heyat û mirinê û ji fitna Mesîhê Deccal xwe dispêrime te.'"*

(B1377 Buxarî, Cena'iz, 87)

# ZIYARETA TIRBA
## SELAM, DUA Û IBRET

**1561.** Suleyman bin Bureyde ji bavê xwe rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) sehabiyên xwe dielimandin ku dema çûne nav meqberê de wiha bêjin: *"Selam li ser we be ey sakinên vî diyarî yê mumin û misilman! Bi vîna Xwedê em ê jî bigihine we. Ez bo we û bo me daxwaza afiyetê ji Xwedê dikim."*

(M2257 Muslim, Cena'iz, 104)



١٥٦٢- عَنْ ابْنِ بُرَيْدَةَ عَنْ أَبِيهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "نَهَيْتُكُمْ عَنْ زِيَارَةِ الْقُبُورِ فَزُورُوهَا فَإِنَّ فِى زِيَارَتِهَا تَذْكِرَةً."



١٥٦٣- عَنْ مَالِكٍ عَنْ زَيْدِ بْنِ أَسْلَمَ عَنْ عَطَاءِ بْنِ يَسَارٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "اللَّهُمَّ لاَ تَجْعَلْ قَبْرِى وَثَنًا يُعْبَدُ اشْتَدَّ غَضَبُ اللَّهِ عَلَى قَوْمٍ اتَّخَذُوا قُبُورَ أَنْبِيَائِهِمْ مَسَاجِدَ."



١٥٦٤- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَجْعَلُوا بُيُوتَكُمْ قُبُورًا وَلاَ تَجْعَلُوا قَبْرِى عِيدًا وَصَلُّوا عَلَيَّ فَإِنَّ صَلاَتَكُمْ تَبْلُغُنِى حَيْثُ كُنْتُمْ."

# PAŞEROJ
## NÊZÎKBÛNA DAWIYÊ

١٥٦٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "سَتَكُونُ فِتَنٌ الْقَاعِدُ فِيهَا خَيْرٌ مِنَ الْقَائِمِ، وَالْقَائِمُ فِيهَا خَيْرٌ مِنَ الْمَاشِى، وَالْمَاشِى فِيهَا خَيْرٌ مِنَ السَّاعِى، مَنْ تَشَرَّفَ لَهَا تَسْتَشْرِفْهُ، فَمَنْ وَجَدَ فِيهَا مَلْجَأً أَوْ مَعَاذًا فَلْيَعُذْ بِهِ."



**1562.** Ibn Bureyde ji bavê xwe neql kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Min men'a we ji ziyaretkirina tirba kiribû. Belê êdî ziyaret bikin. Lewra di ziyaretkirina tirba de tezkîre (bîranîna mirinê û ibretsitandin) heye."*

D3235 Ebû Dawûd, Cena'iz, 75, 77)



**1563.** Îman Malik bi rêya Zeyd bin Eslem ji 'Eta bin Yesar (r.) rîwayet kiriye ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedayê min! Destûra mirovan nede ku tirba min bikin pûteke ku jê re îbadet tê kirin. Enra Xwedê ji wan kesan re gelek dijwar e ku tirbên pêxemberên xwe wergerandine mizgeftê."*

(MU419 Muwatta', Qesru's-salat, 24; HÜ1073 Humeydî, Musned, III, 252)



**1564.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Xaniyên xwe venegerînin qebrîstanê û qebra min jî nekin warê cejnê. Selewata li ser min bidin, bê guman hûn li kû derê bin jî selewatên we digihine min."*

(D2042 Ebû Dawûd, Menasik, 96–97; HM8790 Ibn Hanbel, II, 367)

# PAŞEROJ
## NÊZÎKBÛNA DAWIYÊ

**1565.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê gotiye: *"Wê (di paşeroj de) fîtneyin çêbibin, wê demê kesê rûniştî ji yê şipiya, yê şipiya ji yê bi rê ve diçe, yê bi rê ve diçe ji yê baz dide çêtir e. Kesê xwe li derêxistina fîtnê biqewmîne wê xwe di nav fîtneyê de bibîne. Kesê (xwe ji fîtnê dûr xist) ciheke xwe lê bispêrinê dît bila xwe bispêrîne wî cihî."*

(B7081 Buxarî, Fîten, 9)



١٥٦٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "لاَ تَقُومُ السَّاعَةُ حَتَّى يُقْبَضَ الْعِلْمُ، وَتَكْثُرَ الزَّلاَزِلُ، وَيَتَقَارَبَ الزَّمَانُ، وَتَظْهَرَ الْفِتَنُ، وَيَكْثُرَ الْهَرْجُ –وَهُوَ الْقَتْلُ الْقَتْلُ– حَتَّى يَكْثُرَ فِيكُمُ الْمَالُ فَيَفِيضُ."



١٥٦٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَأْتِى عَلَى النَّاسِ زَمَانٌ لاَ يُبَالِى الْمَرْءُ مَا أَخَذَ مِنْهُ، أَمِنَ الْحَلاَلِ أَمْ مِنَ الْحَرَامِ؟."



١٥٦٨- عَنْ تَمِيمٍ الدَّارِيِّ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "لَيَبْلُغَنَّ هَذَا الْأَمْرُ مَا بَلَغَ اللَّيْلُ وَالنَّهَارُ، وَلَا يَتْرُكُ اللَّهُ بَيْتَ مَدَرٍ وَلَا وَبَرٍ إِلَّا أَدْخَلَهُ اللَّهُ هَذَا الدِّينَ، بِعِزِّ عَزِيزٍ أَوْ بِذُلِّ ذَلِيلٍ، عِزًّا يُعِزُّ اللَّهُ بِهِ الْإِسْلَامَ وَذُلًّا يُذِلُّ اللَّهُ بِهِ الْكُفْرَ.



١٥٦٩- حَدَّثَنَا مَعْبَدٌ قَالَ: سَمِعْتُ حَارِثَةَ بْنَ وَهْبٍ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ يَقُولُ: "تَصَدَّقُوا فَسَيَأْتِى عَلَى النَّاسِ زَمَانٌ يَمْشِى الرَّجُلُ بِصَدَقَتِهِ فَلاَ يَجِدُ مَنْ يَقْبَلُهَا."

**1566.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta ilim nerabe, erdhej zêde nebe, zeman kin nebe, fîtne nederkevin, kuştin zêde nebe û heta fûrandinê mal zêde nebe Qiyamet narabe."*

(B1036 Buxarî, Îstîsqa', 27)



**1567.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wê zemanek wisa were, mirov guh nade ka malê xwe ji ku derê bi dest kiriye; ji helalî an jî ji heramî bi dest kiriye!"*

(B2059 Buxarî, Buyû', 7)



**1568.** Temîm ed-Darî (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Ev dîn wê bigihê her dera ku lê dibe roj û şev. Xwedê xaniyeke ji kerpîça an jî (koneke) ji mûyê devehê hatî çêkirin nahêle ku ev dîn neketibiyê. Ev ji hinekan re îzzet e û ji hinekan re zîllet e. Bi vî awayî wê Xwedê Îslamê ezîz û kufrê zelîl bike."*

(HM17082 Ibn Hanbel, IV, 104)



**1569.** Me'bed ji Harîse bin Wehb bihîstiye ku ewî jî ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Sedeqa bidin. Lewra wê zemanek were wê mirov sedeqa xwe bigerîne keseke ku qebûl bike nabîne."*

(B7120 Buxarî, Fîten, 25)

# QIYAMET
## DESTPÊKA EBEDIYETÊ

١٥٧٠- عَنْ جَابِرِ بْنِ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: كَانَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ إِذَا خَطَبَ احْمَرَّتْ عَيْنَاهُ وَعَلاَ صَوْتُهُ وَاشْتَدَّ غَضَبُهُ حَتَّى كَأَنَّهُ مُنْذِرُ جَيْشٍ يَقُولُ: صَبَّحَكُمْ وَمَسَّاكُمْ! وَيَقُولُ "بُعِثْتُ أَنَا وَالسَّاعَةُ كَهَاتَيْنِ." وَيَقْرُنُ بَيْنَ إِصْبَعَيْهِ السَّبَّابَةِ وَالْوُسْطَى...



١٥٧١- أَخْبَرَنِى أَبُو الزُّبَيْرِ أَنَّهُ سَمِعَ جَابِرَ بْنَ عَبْدِ اللَّهِ يَقُولُ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ قَبْلَ أَنْ يَمُوتَ بِشَهْرٍ: تَسْأَلُونِى عَنِ السَّاعَةِ؟ وَإِنَّمَا عِلْمُهَا عِنْدَ اللَّهِ..."



١٥٧٢- عَنْ حُذَيْفَةَ بْنِ أَسِيدٍ الْغِفَارِىِّ قَالَ: اطَّلَعَ النَّبِيُّ ﷺ عَلَيْنَا وَنَحْنُ نَتَذَاكَرُ فَقَالَ: "مَا تَذْكُرُونَ؟" قَالُوا: نَذْكُرُ السَّاعَةَ. قَالَ: "إِنَّهَا لَنْ تَقُومَ حَتَّى تَرَوْنَ قَبْلَهَا عَشْرَ آيَاتٍ." فَذَكَرَ الدُّخَانَ وَالدَّجَّالَ وَالدَّابَّةَ وَطُلُوعَ الشَّمْسِ مِنْ مَغْرِبِهَا وَنُزُولَ عِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ ﷺ وَيَأْجُوجَ وَمَأْجُوجَ وَثَلاَثَةَ خُسُوفٍ: خَسْفٌ بِالْمَشْرِقِ وَخَسْفٌ بِالْمَغْرِبِ وَخَسْفٌ بِجَزِيرَةِ الْعَرَبِ وَآخِرُ ذَلِكَ نَارٌ تَخْرُجُ مِنَ الْيَمَنِ تَطْرُدُ النَّاسَ إِلَى مَحْشَرِهِمْ.



١٥٧٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ: "لاَ تَقُومُ السَّاعَةُ حَتَّى يُقْبَضَ الْعِلْمُ، وَتَكْثُرَ الزَّلاَزِلُ، وَيَتَقَارَبَ الزَّمَانُ، وَتَظْهَرَ الْفِتَنُ، وَيَكْثُرَ الْهَرْجُ –وَهُوَ الْقَتْلُ الْقَتْلُ– حَتَّى يَكْثُرَ فِيكُمُ الْمَالُ فَيَفِيضُ."



# QIYAMET
## DESTPÊKA EBEDIYETÊ

**1570.** Cabîr bin Ebdîllah (r.) gotiye: "Dema Resûlê Xwedê (s.) xutbe dixwend, çavên wî sor dibûn, dengê wî bilind dibû, hîddeta wî zêde dibû heta te digot qey şiyarvanek bû ku leşkerekî ji neyarên wî ditirsînê û dibêje: 'Mumkin e di sibehê de an di êvarê de leşkerê neyar bi ser we de bigre'. Vêca Resûlê Xwedê (s.) tilîya şehadetê û tilîya navîn didane berhev û digot: *'Ez û qîyamet wekî van herdu tilîyan hatine şiyandin.'*"

(M2005 Muslim, Cum'a, 43)



**1571.** Ebu'z-Zubeyr ji Cabîr bin Ebdillah bihîstiye digot: "Min berî wefata wî bi mehekî ji Resûlê Xwedê (s.) bihîst digot: *"Hûn pirsa qiyametê ji min dikin. Belê ji bilî Xwedê kes pê nizane."*"

(M6481 Muslim, Feda'ilu's-sahabe, 218)



**1572.** Huzeyfe bin Esîd el-Xîfarî (r.) gotiye: "Carekî me bi hev re suhbet dikir, Resûlê Xwedê (s.) hate cem me û got: *'Hûn behsa çi dikin?'* Sehabiyan jî gotin: 'Em behsa qiyametê dikin.' Vêca Resûlê Xwedê (s.) got: *'Heta hûn van deh elametan nebînin qiyamet narabe.'* Û behsa van kir: Dû, Deccal, Dabbe, derketina rojê ji rojava, hatina Îsa bin Meryem (es.), Yecûc û Mecûc, yek li şerqê, yek li xerbê û yek jî li erdê Ereban çêbûna sê daxwerandinên mezin û derketina agirekî ji Yemenê ku mirovan dide ber xwe heta wan digihîne cihê mehşera wan."

(M7285 Muslim, Fîten we eşratu's-sa'e, 39)



**1573.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta ilim nerabe, erdhej zêde nebe, zeman kin nebe, kuştin zêde nebe û heta fûrandinê mal zêde nebe Qiyamet narabe."*

(B1036 Buxarî, Îtîsqa', 27)



١٥٧٤- عَنْ أَنَسِ بْنِ مَالِكٍ: أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ النَّبِيَّ ﷺ : مَتَى السَّاعَةُ يَا رَسُولَ اللَّهِ؟ قَالَ: "مَا أَعْدَدْتَ لَهَا؟."

# AXÎRET
## SIBIHA BÊDAWÎ

١٥٧٥- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ ﷺ يَقُولُ: "يُبْعَثُ كُلُّ عَبْدٍ عَلَى مَا مَاتَ عَلَيْهِ."



١٥٧٦- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "يُحْشَرُ النَّاسُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ ثَلاَثَةَ أَصْنَافٍ: صِنْفًا مُشَاةً وَصِنْفًا رُكْبَانًا وَصِنْفًا عَلَى وُجُوهِهِمْ."



١٥٧٧- عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "لاَ تَزُولُ قَدَمَا ابْنِ آدَمَ يَوْمَ الْقِيَامَةِ مِنْ عِنْدِ رَبِّهِ حَتَّى يُسْأَلَ عَنْ خَمْسٍ عَنْ عُمْرِهِ فِيمَا أَفْنَاهُ وَعَنْ شَبَابِهِ فِيمَا أَبْلاَهُ وَمَالِهِ مِنْ أَيْنَ اكْتَسَبَهُ وَفِيمَ أَنْفَقَهُ وَمَاذَا عَمِلَ فِيمَا عَلِمَ."



١٥٧٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عُمَرَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "الْكَوْثَرُ نَهْرٌ فِي الْجَنَّةِ حَافَّتَاهُ مِنْ ذَهَبٍ وَمَجْرَاهُ عَلَى الدُّرِّ وَالْيَاقُوتِ تُرْبَتُهُ أَطْيَبُ مِنَ الْمِسْكِ وَمَاؤُهُ أَحْلَى مِنَ الْعَسَلِ وَأَبْيَضُ مِنَ الثَّلْجِ."



**1574.** Ji Enes bin Malik (r.) hatiye rîwayetkirin ku zilamekî ji Resûlê Xwedê (s.) pirsî: "Ya Resûlê Xwedê! Ma qiyamet kengî ye?" Pêxember (s.) got: *"Ma te jê re çi hazir kiriye?"*

(B6171 Buxarî, Edeb, 96)

# AXÎRET
## SIBIHA BÊDAWÎ

**1575.** Cabir (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) bihîstiye digot: *"Wê herkes li ser halê mirî, were heşirkirin."*

(M7232 Muslim, Cennet we sifetu ne'îmiha ve ehliha, 83)



**1576.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wê mirov Roja Qiyametê weke sê biran werine heşirkirin: Birek bi peyatî, birek bi suwarî û birek jî bi hişikandina li ser rûyê xwe."*

(T3142 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 17)



**1577.** Ji Ibn Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta mirov Roja Qiyametê ji van pênc tiştan neyê pirsîn ji huzûra Xwedê bi tu deverên din ve nalepite: Ji umrê xwe ka di çi de derbas kiriye, ji xortaniya xwe ka di çi de pîr kiriye, ji malê xwe ka ji ku bidest kiriye û di çi de mezixandiye, ji ilmê xwe ka pê emel kiriye an na."*

(T2416 Tirmizî, Sifetu'l-qiyame, 1)



**1578.** Ji Ebdullah bin Umer (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kewser şeteke di cennetê de ye. Herdu deravên wî ji zêr in, mecra wî li ser yaqût û mercana ye, axa wî ji miskê bêhnxweştir e, ava wî ji hingiv şîrîntir û ji berfê sipîtir e."*

(T3361 Tirmizî, Tefsîru'l-Qur'an, 108)



١٥٧٩- عَنْ أَبِى سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ ...قِيلَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ! وَمَا الْجِسْرُ؟ قَالَ: "دَحْضٌ مَزِلَّةٌ فِيهِ خَطَاطِيفُ وَكَلاَلِيبُ وَحَسَكٌ تَكُونُ بِنَجْدٍ فِيهَا شُوَيْكَةٌ يُقَالُ لَهَا السَّعْدَانُ فَيَمُرُّ الْمُؤْمِنُونَ كَطَرْفِ الْعَيْنِ وَكَالْبَرْقِ وَكَالرِّيحِ وَكَالطَّيْرِ وَكَأَجَاوِيدِ الْخَيْلِ وَالرِّكَابِ فَنَاجٍ مُسَلَّمٌ وَمَخْدُوشٌ مُرْسَلٌ وَمَكْدُوسٌ فِى نَارِ جَهَنَّمَ..."

# ŞEFAET
## DUAYA HZ. PÊXEMBER

١٥٨٠- عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ أَنَّهُ قَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَاذَا رَدَّ إِلَيْكَ رَبُّكَ عَزَّ وَجَلَّ فِي الشَّفَاعَةِ؟ قَالَ: لَقَدْ ظَنَنْتُ لَتَكُونَنَّ أَوَّلَ مَنْ سَأَلَنِي "لِمَا" رَأَيْتُ مِنْ حِرْصِكَ عَلَى الْعِلْمِ شَفَاعَتِي لِمَنْ يَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ مُخْلِصًا يُصَدِّقُ قَلْبُهُ لِسَانَهُ وَلِسَانُهُ قَلْبَهُ.



١٥٨١- عَنْ أَبِى مُوسَى الأَشْعَرِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "خُيِّرْتُ بَيْنَ الشَّفَاعَةِ وَبَيْنَ أَنْ يَدْخُلَ نِصْفُ أُمَّتِى الْجَنَّةَ. فَاخْتَرْتُ الشَّفَاعَةَ. لأَنَّهَا أَعَمُّ وَأَكْفَى أَتُرَوْنَهَا لِلْمُتَّقِينَ؟ لاَ وَلَكِنَّهَا لِلْمُذْنِبِينَ الْخَطَّائِينَ الْمُتَلَوِّثِينَ."



**1579.** Ebû Seîd el-Xudrî (r.) gotiye: "... Hate gotin: 'Ya Resûlê Xwedê! Ma pira sîratê çi ye?' Resûlê Xwedê (s.) got: *'Tişteke şemîtok û hejhejok e. Tê de çengil, bizmarên sertûj û sitiriyên mîna wan sitiriyên li Necdê çêdibin hene ku navê wan se'dan e. Vêca hinek mumin tê re weke çavnoqandin û çavbelkirinekî di zemanekî zû de, hinek weke belediyê, hinek weke bayê, hinek weke teyrika, hinek jî weke hespê esîl û devehan derbas dibin. Di netîcê de, hinek bi silametî, hinek xerişî xilas dibin û hinek jî bi sernişovkî dikevine cehnemê de...'*"

(M454 Muslim, Îman, 302)

# ŞEFAET
## DUAYA HZ. PÊXEMBER

**1580.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin ku ji Resûlê Xwedê (s.) pirsiye: "Ya Resûlê Xwedê! Ma Rebbê te Ezze we Celle di derheqê şefaetê de çi heq daye te?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Ji ber hirsa te pêşber ilmê de min texmîn dikir ku tu yê pêşî vê pirsê ji min bikî. Şefaeta min ji wî kesî re ye ku bi dilekî semîmî bêweku dilê wî zimanê wî û zimanê wî dilê wî tesdîq bike, şehde bide ku 'ji bilî Xwedê Ellah, tu îlah nîn in."*

(HM10724 Ibn Hanbel, II, 518)



**1581.** Ji Ebû Mûsa el-Eş'erî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez di neqeba du tiştan de hatime muxeyyerkirin; heqê şefaetê û heqê ku nîvê ummeta min here cennetê. Vêca min şefaet bijart. Lewra şefaet hê ferehtir û kafîtir e. Ma hûn zen dikin wê şefaeta min ji ehlê teqwayê re be? Nexêr! Ew ji gunehkar, ji kesên zehf xeletî kirîn û ji kesên lewitî re ye."*

(İM4311 Ibn Maceh, Zuhd, 37)



١٥٨٢- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "لِكُلِّ نَبِيٍّ دَعْوَةٌ يَدْعُوهَا فَأُرِيدُ أَنْ أَخْتَبِئَ دَعْوَتِى شَفَاعَةً لأُمَّتِى يَوْمَ الْقِيَامَةِ."



١٥٨٣- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "أَنَا سَيِّدُ وَلَدِ آدَمَ وَأَوَّلُ مَنْ تَنْشَقُّ عَنْهُ الأَرْضُ وَأَوَّلُ شَافِعٍ وَأَوَّلُ مُشَفَّعٍ."



١٥٨٤- عَنْ أَبِي أُمَامَةَ الْبَاهِلِيِّ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "اقْرَءُوا الْقُرْآنَ فَإِنَّهُ يَأْتِي شَفِيعًا يَوْمَ الْقِيَامَةِ لِصَاحِبِهِ..."

# RÊYÊN DIÇINE CEHNEMÊ
## XWESTINÊN SUFLÎ Û HEYWANÎ

١٥٨٥- عَنْ جَابِرٍ قَالَ: أَتَى النَّبِيَّ ﷺ رَجُلٌ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللَّهِ مَا الْمُوجِبَتَانِ؟ قَالَ: "مَنْ مَاتَ لاَ يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئًا دَخَلَ الْجَنَّةَ وَمَنْ مَاتَ يُشْرِكُ بِاللَّهِ شَيْئًا دَخَلَ النَّارَ."



١٥٨٦- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ يَدْخُلُ النَّارَ أَحَدٌ فِى قَلْبِهِ مِثْقَالُ حَبَّةِ خَرْدَلٍ مِنْ إِيمَانٍ وَلاَ يَدْخُلُ الْجَنَّةَ أَحَدٌ فِى قَلْبِهِ مِثْقَالُ حَبَّةِ خَرْدَلٍ مِنْ كِبْرِيَاءَ."



**1582.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Her pêxemberekî duayek heye. Ez dixwazim dua xwe bihêlim Roja Qiyametê bo şefaeta ummeta xwe bikim."*

(M487 Muslim, Îman, 334)



**1583.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ez serwerê zarokê Adem im. Kesê pêşî ji tirbê dirabe ez im. Kesê pêşî şefaetê bike û şefaeta wî were qebûlkirin ez im."*

(D4673 Ebû Dawûd, Sunnet, 13)



**1584.** Ji Ebû Umame el-Bahilî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Qur'anê bixwînin. Lewra Qur'an Roja Qiyametê dibe şefîê xwendekarê xwe..."*

(HM22546 Ibn Hanbel, V, 255; M1874 Muslim, Salate'l-musafirîn we qesruha, 252)

# RÊYÊN DIÇINE CEHNEMÊ
## XWESTINÊN SUFLÎ Û HEYWANÎ

**1585.** Ji Cabir (r.) hatiye ragihandin ku zilamek hat cem Resûlê Xwedê (s.) û got: "Ya Resûlê Xwedê! Ew herdu sebebên (cennet û cehnemê) wacib dikin çi ne?" Resûlê Xwedê (s.) got: *"Kesê bêyî ku tiştekî ji Xwedê re bixe şirîk bimire wê bikeve cennetê. Kesê tiştekî ji Xwedê re bixe şirîk û li ser vî halî bimire wê bikeve cehnemê."*

(M269 Muslim, Îman, 151)



**1586.** Ji Ebdullah (bin Mesûd) (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê miqdarê heba xerdelê îman di qelbê wî de heyî nakeve cehnemê. Kesê miqdarê heba xerdelê kibr di qelbê wî de heyî nakeve cennetê."*

(M266 Muslim, Îman, 148; T1998 Tirmizî, Birr we sile, 61)



١٥٨٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: سُئِلَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ عَنْ أَكْثَرِ مَا يُدْخِلُ النَّاسَ الْجَنَّةَ قَالَ: "تَقْوَى اللَّهِ وَحُسْنُ الْخُلُقِ." وَسُئِلَ عَنْ أَكْثَرِ مَا يُدْخِلُ النَّاسَ النَّارَ قَالَ: "الْفَمُ وَالْفَرْجُ."



١٥٨٨- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ رضي الله عنه عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "إِنَّ الصِّدْقَ يَهْدِى إِلَى الْبِرِّ، وَإِنَّ الْبِرَّ يَهْدِى إِلَى الْجَنَّةِ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَصْدُقُ حَتَّى يَكُونَ صِدِّيقًا، وَإِنَّ الْكَذِبَ يَهْدِى إِلَى الْفُجُورِ، وَإِنَّ الْفُجُورَ يَهْدِى إِلَى النَّارِ، وَإِنَّ الرَّجُلَ لَيَكْذِبُ، حَتَّى يُكْتَبَ عِنْدَ اللَّهِ كَذَّابًا."



١٥٨٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "حُجِبَتِ النَّارُ بِالشَّهَوَاتِ، وَحُجِبَتِ الْجَنَّةُ بِالْمَكَارِهِ."

# CEHENNEM
## EZABÊ ŞEWATÊ

١٥٩٠- عَنْ عَبْدِ اللَّهِ بْنِ عَبَّاسٍ قَالَ: انْخَسَفَتِ الشَّمْسُ، فَصَلَّى رَسُولُ اللَّهِ ﷺ ثُمَّ قَالَ: "أُرِيتُ النَّارَ، فَلَمْ أَرَ مَنْظَرًا كَالْيَوْمِ قَطُّ أَفْظَعَ."



**1587.** Ebû Hureyre (r.) gotiye: "Ji Resûlê Xwedê (s.) hate pirsîn: Ma ew tişta ku zehftir mirovan têxê cennetê çi ye? Ewî got: *"Xwe parastina ji ezabê Xwedê (teqwa) û exlaqê xweş e."* Û jê hate pirsîn: Ma ew tişta ku zehftir mirovan têxê cehnemê çi ye? Got: *"Dev/ziman û ewret e."*

(T2004 Tirmizî, Birr we sile, 62; İM4246 Ibn Maceh, Zuhd, 29)



**1588.** Ji Ebdullah bin Mesûd (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ji rastiyê neveqetihin. Bêguman rastî berê însanî dide başîyê û başî jî berê însan dide cennetê û mirov rast dibêje/rastîyê ji xwe re dike exlaq heta li cem Xwedê ji siddîqan/rastgoyan tê nivîsîn. Xwe ji derewan biparêzin. Bêguman derew berê însan dide xirabiyê û xirabî jî berê însan dide cehnemê û mirov derewa dike heta ku li cem Xwedê ji derewkeran tê nivîsîn."*

(B6094 Buxarî, Edeb, 69)



**1589.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Cehennem bi xwestinên nefsê (bi şehwetê) hatiye sênckirin û cennet bi tiştên xweşa nefsê naçe hatiye sênckirin."*

(B6487 Buxarî, Riqaq, 28; M7130 Muslim, Cennet we sifetu ne'îmiha we ehliha, 1)

# CEHENNEM
## EZABÊ ŞEWATÊ

**1590.** Ebdullah bin Ebbas (r.) gotiye: "Roj xira bû. Vêca Resûlê Xwedê (s.) pêşiya cemaetê nimêj kir û piştre jî got: *"Cehennem şanî min hate dayîn. Min menzereyek weke îro bitirs û bidehşet tucarî nedîtibû."*

(B431 Buxarî, Salat, 51)



١٥٩١- عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ ... قَالَ: "لَوْ أَنَّ قَطْرَةً مِنَ الزَّقُّومِ قُطِرَتْ فِي دَارِ الدُّنْيَا لَأَفْسَدَتْ عَلَى أَهْلِ الدُّنْيَا مَعَايِشَهُمْ فَكَيْفَ بِمَنْ يَكُونُ طَعَامُهُ."



١٥٩٢- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "إِنَّ أَدْنَى أَهْلِ النَّارِ عَذَابًا يَنْتَعِلُ بِنَعْلَيْنِ مِنْ نَارٍ يَغْلِي دِمَاغُهُ مِنْ حَرَارَةِ نَعْلَيْهِ."



١٥٩٣- عَنْ عَدِيِّ بْنِ حَاتِمٍ قَالَ: قَالَ النَّبِيُّ ﷺ : "...اتَّقُوا النَّارَ وَلَوْ بِشِقِّ تَمْرَةٍ، فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَبِكَلِمَةٍ طَيِّبَةٍ."

# RÊYÊN DIÇINE CENNETÊ
## EMELÊN SALIH, EXLAQÊ QENC Û PAK

١٥٩٤- عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ أَنَّ رَسُولَ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "يَا أَبَا سَعِيدٍ مَنْ رَضِيَ بِاللَّهِ رَبًّا وَبِالْإِسْلَامِ دِينًا وَبِمُحَمَّدٍ نَبِيًّا وَجَبَتْ لَهُ الْجَنَّةُ."



**1591.** Ji Ibn Ebbas(r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heke dilopek zeqqûm (xwarina ehlê cehnemê) ketiba dinyayê, wê meîşeta wan xira kiriba. De ka vêca kesê xwarina wî tev zeqqûm be wê çewa tehemmul bike!"*

(T2585 Tirmizî, Sifatu cehennem, 4)



**1592.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Di nav ehlê cehnemê de yê ezabê wî siviktir ew e ku du pêlavên ji agir di lingê wî de ne, ji herareta pêlavên wî mejiyê wî dikele."*

(M514 Muslim, Îman, 361)



**1593.** Ji 'Edî bin Hatim (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"... Bi qetek xurmeyekî jî be xwe ji cehnemê biparêzin. Heke we ev jî nekarî, bi gotineke xweş (xwe biparêzin.)"*

(B6540 Buxarî, Riqaq, 49)

# RÊYÊN DIÇINE CENNETÊ
## EMELÊN SALIH, EXLAQÊ QENC Û PAK

**1594.** Ji Ebû Seîd el-Xudrî (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Ya Ebû Seîd! Kesê Xwedê reb, Îslamê dîn û Muhemmed pêxember û resûl qebûl kirî cennet jê re wacib dibe."*

(M4879 Muslim, Îmare, 116)



١٥٩٥- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ قَالَ: رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "لاَ تَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ حَتَّى تُؤْمِنُوا، وَلاَ تُؤْمِنُوا حَتَّى تَحَابُّوا، أَوَلاَ أَدُلُّكُمْ عَلَى شَيْءٍ إِذَا فَعَلْتُمُوهُ تَحَابَبْتُمْ؟ أَفْشُوا السَّلاَمَ بَيْنَكُمْ."



١٥٩٦- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنِ النَّبِيِّ ﷺ قَالَ: "يَدْخُلُ الْجَنَّةَ أَقْوَامٌ أَفْئِدَتُهُمْ مِثْلُ أَفْئِدَةِ الطَّيْرِ."



١٥٩٧- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ قَالَ: سُئِلَ النَّبِيُّ ﷺ : مَا أَكْثَرُ مَا يُدْخِلُ الْجَنَّةَ؟ قَالَ: "التَّقْوَى وَحُسْنُ الْخُلُقِ."



١٥٩٨- عَنْ عُبَادَةَ بْنِ الصَّامِتِ أَنَّ النَّبِيَّ ﷺ قَالَ: "اضْمَنُوا لِي سِتًّا مِنْ أَنْفُسِكُمْ، أَضْمَنْ لَكُمُ الْجَنَّةَ، اصْدُقُوا إِذَا حَدَّثْتُمْ، وَأَوْفُوا إِذَا وَعَدْتُمْ، وَأَدُّوا إِذَا اؤْتُمِنْتُمْ، وَاحْفَظُوا فُرُوجَكُمْ، وَغُضُّوا أَبْصَارَكُمْ، وَكُفُّوا أَيْدِيَكُمْ."

# CENNET
## WARÊ HUZÛRA SERMEDÎ

١٥٩٩- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "قَالَ اللَّهُ أَعْدَدْتُ لِعِبَادِى الصَّالِحِينَ مَا لاَ عَيْنٌ رَأَتْ، وَلاَ أُذُنٌ سَمِعَتْ، وَلاَ خَطَرَ عَلَى قَلْبِ بَشَرٍ..."



**1595.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Heta hûn îmanê neynin hûn nakevin cennetê û heta hûn hez ji hev nekin hewe îman neaniye. Ma ez tişteka ku dema we kir hûn ê ji hev hez bikin ji hewe re bêjim? Di nav xwe de selamê belav bikin."*

(M194 Muslim, Îman, 93)



**1596.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Wê, mirovên ku qelbê wan mîna qelbê teyrikan (saf û paqij) in bikevine cennetê."*

(M7162 Muslim, Cennet we sifatu ne'îmiha we ehliha, 27)



**1597.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku ji Resûlê Xwedê (s.) tişta zehftir dibe wesîla ketina mirovan di cennetê de hate pirsîn. Ewî got: *"Teqwatiya Xwedê (parastina ji ezabê Wî) û exlaqê xweş."*

(İM4246 Ibn Maceh, Zuhd, 29)



**1598.** Ji 'Ubade bin es-Samit (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Hûn ji teref xwe ve ewleyiya şeş tiştan bidin min, ez ê jî ewleyiya cennetê bidime we: Dema hûn axivîn rast biaxivin, dema we soz da pêk bînin, dema tiştek emanetî we hate kirin riayet bikin, namûsa xwe muhafeze bikin, çavê xwe (ji nezera heram) biparêzin û destê xwe (ji heramiyê) dûr bikin."*

(HM23137 Ibn Hanbel, V, 323)

# CENNET
## WARÊ HUZÛRA SERMEDÎ

**1599.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Xwedê Ezze we Celle gotiye: 'Min ji ebdên xwe yên salih re tiştên wisa hazir kirine, ne çavan dîtî, ne guhan bihîstî ne jî ketî dilê beşerekî.'"*

(B3244 Buxarî, Bed'u'l-xelq, 8)



١٦٠٠- عَنْ هَمَّامِ بْنِ مُنَبِّهٍ قَالَ: هَذَا مَا حَدَّثَنَا أَبُو هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ فَذَكَرَ أَحَادِيثَ مِنْهَا وَقَالَ رَسُولُ اللَّهِ ﷺ : "إِنَّ أَدْنَى مَقْعَدِ أَحَدِكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ أَنْ يَقُولَ لَهُ: تَمَنَّ فَيَتَمَنَّى وَيَتَمَنَّى فَيَقُولُ لَهُ: هَلْ تَمَنَّيْتَ؟ فَيَقُولُ: نَعَمْ. فَيَقُولُ لَهُ: فَإِنَّ لَكَ مَا تَمَنَّيْتَ وَمِثْلَهُ مَعَهُ."



١٦٠١- عَنْ أَبِى هُرَيْرَةَ عَنْ رَسُولِ اللَّهِ ﷺ قَالَ: "مَنْ أَنْفَقَ زَوْجَيْنِ فِى سَبِيلِ اللَّهِ عَزَّ وَجَلَّ نُودِيَ فِى الْجَنَّةِ: يَا عَبْدَ اللَّهِ! هَذَا خَيْرٌ. فَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصَّلاَةِ يُدْعَى مِنْ بَابِ الصَّلاَةِ وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الْجِهَادِ يُدْعَى مِنْ بَابِ الْجِهَادِ وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصَّدَقَةِ يُدْعَى مِنْ بَابِ الصَّدَقَةِ وَمَنْ كَانَ مِنْ أَهْلِ الصِّيَامِ دُعِيَ مِنْ بَابِ الرَّيَّانِ."

**1600.** Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye ragihandin ku Resûlê Xwedê (s.) gotiye: *"Kesê di rêya Xwedê Ezze we Celle de ji malê xwe cuht cuht bimezixêne, di cennetê de wê were gazîkirin: 'Ey ebdê Xwedê! İha xêr ev e.' Kesê ji ehlê nimêjê be, di deriyê nimêjê re tê gazîkirin. Kesê ji ehlê cîhadê be, di deriyê cîhadê re tê gazîkirin. Kesê ji ehlê sedeqê be, di deriyê sedeqê re tê gazîkirin. Kesê ji ehlê rojiyê be, di deriyê Reyyanê re tê gazîkirin."*

(N2240 Nesaî, Siyam, 43)



**1601.** Hemmam bin Munebbih gotiye: "Ev çend hedîs in ku Ebû Hureyre (r.) ji Resûlê Xwedê (s.) neqlê me kirin e." Piştre çend hedîs ji me re gotin. Di yekî ji wan de Resûlê Xwedê wiha gotiye: *"Bêguman meqamê yekî ji hewe yê herî nivz ew e ku Xwedê jê re dibêje: 'Bixwaze!' Ew jî dixwaze û dixwaze!. Xwedê jê re dibêje: 'Ma te xwest?' Dibêje: 'Erê.' Vêca Xwedê jê re dibêje: 'Te çi xwestibe bi du qetan ji te re ye.'"*

(M453 Muslim, Îman, 301)

